Kitabın Adı
**RONAHİYA ÎMANÊ**
**MELA MUHEMMEDÊ PÎROSÎ HAKKARÎ**

Editör
**Şamil GÖK**

Mizanpaj ve Kapak Tasarım
**A. Azzam ÖZEL**

Tashih ve Redaksiyon
**Doç. Dr. Ayhan TEK (Ayhan Geverî)**
**Şarezayê EZMANÊ KURDÎ**
**Öğr. Gör. Veysi TURUN**
**Şarezayê EZMANÊ FARİSÎ**

**ISBN**

MATBAA
**Step Ajans Matbaa Ltd. Şti.**
Göztepe Mahallesi Bosna Caddesi No.11
Bağcılar/İstanbul Telefon: 0212 446 88 46
Matbaa Sertifika No: 45522




MUHARREM -1444
AĞUSTOS - 2022

Ziya Gökalp Mahallesi, Abdullah Paşa Caddesi, No:28
Başakşehir/İstanbul
Telefon/Faks: 0212 512 45 43 - 512 51 66 - 512 90 40
WhatsApp Hattı: 0212 909 80 86
Web: www.bekakitap.com Eposta: bekayay@hotmail.com
Yayıncılık Sertifika No: 50128

# BABETÊT VÊ KITÊBÊ

بسم الله الرحمن الرحيم

# TEQDİM

Bê şık, medh û sena, her bo **ELLAH** Te'ala ne. Em, hergav medh û senayêt **Wî** bi tinê di keyn, harîkariyê û meğfîretê jî, ji **Wî** bi tinê di xwazîn û daxwaz dikeyn. Ji şerrê nefsêt xwe û xirabiya ‘emelêt xwe, em xwe dispêrîne **ELLAH** Te'ala. Yê **ELLAH** Te'ala bînîte ser rêka rast; hîdayet kiriye nesîbê wî, qet kesek neşêt wî bibete delaletê û ji rê derbêxît. Yê kû **EW** ji rê derbêxît û bibete delaletê jî, qet kesek neşêt wî bînîte ser rêka hîdayetê.

Ez şahidiyê didem ku; ji bilî **ELLAH** Te'ala qet çu îlahêt dî yêt **HEQ** nînin û nabin. **EW**, êke û êkî bi tinê ye bê heval û bê zewal e. Qet ji bo Wî çu şirîk û hevkûf nînin, di nav û sıfetêt Wî da, qet çu tişt û kesek wekî wî nîne û nabît jî.

**XUDÊ** Te'ala di qur'ana pîroz da ferman diket û di bêjît:

لَيْسَ كَمِثْلِهِ شَيْءٌ وَهُوَ السَّمِيعُ البَصِيرُ

“Qet çu tiştê wekî Ellahu Te‘ala nîn e û nabît. Ellahu Te‘ala hay ji hemî deng û pêznîya heye û Ew hemî tişta bi timamî dibînît. .” (Şura,11)

Dîsa ez şahidîyê didem ku, Muhammed -‘eleyhîsselam- jî ‘ebd û resûlê **ELLAH** Te'ala ye. Ew rehmeteke bo hemî ‘alema yê hatîye birêkirin. XUDÊ Te'ala, ew bi dînê heq û ji bo hîdayet; da ku ew berê însana ji ‘ebdîniya 'ebda bidete ‘ebdîniya ELLAH Te'ala bitinê, ji zulma hemî dîn û baweriyêt şaş û xelet û xiryayî, berê wa bidete ‘edaleta dînê Îslamê, ji tengavî û nexweşiyêt vê dinya aloz berê wa bidete berfirehî

û xweşyêt dinya û axiretê. -Salat û selamên REBBÊ min liser wî, malbata wî û hemî heval û hogirêt wî bin-.

Çu şuphe nîne ku berî muhammed (a.s) bibîte pêxember û bête birêkirin, însan di nav cehaleteka mezin da bûn; jîn û jîyana wa li bin tarîtî û zûlûmeta cehaletê; li bin hukmê kafiriyê, şirkê da diborî. Di nav talankirin û şerê qebîletiyê da fermana êkudu tînand; êkudu di kuştin êxsîr di kirin.

Heta ELLAH Te'ala, izna derketina ronahiya Îslamê da ku bo însaniyetê baş ruhn û aşkira biket ku "**Jı bilî ELLAH Te'la qet çu îlahêt HEQ nînın; ji bilî WÎ çu me'budêt rast nînin û nabin**" î'lan biket Muhammed (a.s) kire pêxemberê axirê zemanî û bo hemî alama rêkir. Da kû heqê ELLAH Te'ala ewê ku fere li ser 'evda û sebeb û ğaya xulqîyeta wa ya mezin ku tewhîde aşkirakir.

Xudê Te'ala di qur'ana pîrozda ferman diket dibêjît:

وَمَا خَلَقْتُ الْجِنَّ وَالْإِنسَ إِلَّا لِيَعْبُدُونِ

"Min ecin û mirov yêt dayîn û xuliqadîn da ku ew hema her bes ji bo Min 'evdînîyê biken. (Zarîyat,56)

Hemî pêxember, bi tewhîdê yêt hatîne rêkirin: Kitêbêt semawî ji bo zanîn û naskirina êkanîya WÎ nazilbûyne. Alayê cîhadê bo WÎ yê hatiye kêşan û bilind kirin. Muhammedî (a.s) sêzdeh sala însan yê gazîkirîye tewhîd û êkanîya ELLAH Te'ala. Tovê tewhîdê avête nav beyar û kûratîya sing û dilan da. Di wîjdana da temel û asasêt danandîne û qayîm kirin. Heta ku bo rêvingîyêt vê rêkê, rê ron û geş bû. Yê ev rê vîyay 'elamet û îşaret bo beyan bûn. Bi vî şiklî ELLAH Te'la, heq beyan kir û batil jî pûç û berze kir. Nûra tewhîda safî dil ron û geş kirin. Ew ji qirêj û genîtî û gemara şirk û putperestîyê paqij û geş kirin.

Heta ew tiştê Xudê Te'ala teqdîr kirî hatîye meydanê 'eqîda, paqij û berraq ma liser 'eslê xwe. Dümahîkê ya çêbûy çêbu. Ew kesêt kû di dilêt wa da hêst û ramanêt tewhîda safî têda ney jî hatine dînê ELLAH Te'ala da. Xirabî di nav însanada çêbû. Rêkêt wa parçe parçe bûn. Mezhebêt xirab û fikrêt şaş û xirabker gelek pêşketin. Fitne û fesadî li her derî belavbû. Bi hemî şidddet û quwwetê bîd'e belavbûn. Heta kû çav di sera da xar û zîq bûn. Tirs û xewf ketîye di nav cerg û hinava da. Mu'min bi îmtihaneka mezin hatine imtihan kirin. ELLAH Te'ala; 'insan, dibin qendîla nubuwwetê û dîsa di qel'a îmanê da dê komket. Dê ze'îfya batilî dê bo wa beyan ket. Dê îddîa'yêt direwîna pûç û betal ket. Bi vî şiklî bo wa, rêber û rêzan û 'alimêt hîdayetê rêkirin kû ew bi zivirine ser rêka selefêt salih.

Ew kesêt berê xwe bidene tarîxa ummeta Îslamê; dê bînin ku quwweta wa, pêş ketina wa, hukum kirina wa liser milletêt dî, hemî bi sebebê 'eqîda safî, samîmîyeta li hemberî ELLAH Te'ala ,tabı'bûna sunneta pêxemberî, û çûna li dûv rêka selefêt salih 'eleqe û tayekê gelekî qayîm yê li gelêk hey. 'Eynen ze'îf û zelil bûna ummetê ketina li bin hukmê milletêt dî û di dînîda derketina bîd'e xurefa, çêkirina şirika bo Xudê Te'ala ,derketina firqêt xiryay, dûr ketina ji iti'atê û derketina hemberî 'alimêt selefa quwwet û 'eleqeka gelek mezin ya li gelêk hey.

Bawerîyêt xirab, derketina ji rêka selefêt salih, xapandin û gotinêt wa mezhebêt xiryay ew ji rê derêxistin û parçe parçe kirin. Quwweta wa ne hêla û heybeta wa şkand. Tarix, şahid e bo vê hindê. Çu rêkêt dî nînin Ji bilî tabi' bûna rêka muhemmedî (a.s) ,sahabîyêt wî û rêberêt hîdayetê.

Yêt piştî hingê hatîn ji vê ummetê, bes bi wa tiştêt yêt berî wa hatî û xwe pê rast kirî dê rast bûn. Derketina ji rêka tewhîdê û piştdana rêka selefêt salih, ziddê însaf û ‘edaletêye û dürketina ji rêka şirîetiye.

Xudê Te’ala di qur’ana pîroz da ferman diket û dibêjît:

لَقَدْ أَرْسَلْنَا رُسُلَنَا بِٱلْبَيِّنَٰتِ وَأَنزَلْنَا مَعَهُمُ ٱلْكِتَٰبَ وَٱلْمِيزَانَ لِيَقُومَ ٱلنَّاسُ بِٱلْقِسْطِ

“Bi sûnd, Me pêxemberêt xwe bi delîl û mu‘cîzêt aşkera hinartibûn, û Me li gel wa pêxembera kitêb; hukm ehkamêt şerî‘etî yêt hinartine xwarê û terazî jî Me, ya îcad kirî da kû mirov pê ‘edaletê di navbeyna xwe da ragirin.”(Hadîd,25)

‘Edaleta mezin Tewhîde. Ew, serê ‘edaletêye .’Edalet bi wê dê rawestît. Şîrk ji zulma herî mezin e. ELLAH Te’la di behsê Luqman (a.s) da di bêjit: wextê Luqman (a.s) gotî:

وَإِذْ قَالَ لُقْمَانُ لِابْنِهِ وَهُوَ يَعِظُهُ يَا بُنَيَّ لَا تُشْرِكْ بِاللَّهِ إِنَّ الشِّرْكَ لَظُلْمٌ عَظِيمٌ

“(Ey Muhemmed!) Tu bîne bîra xwe li demê Luqmanî we‘z û şîret li kurê xwe di kirin û gotiyê: “Ey kurê min! Tu çu hevkûf û şirîka bo Ellahu Te‘ala çêneke! Bê şik, hevkûf û şirîk çêkirin (bo Ellahu Te‘ala) zilmeka gelek mezin e; mirov li ruha

xwe diket.”(Lokman ,13)

Ebu’d-Derda Xuda jê razîbît wehesa yê jê hatîye rîwayet kirin: Resûlê Xuda wehe got: “ELLAH Te’ala wehesa ferman kir û got: Dınavbeyna min ‘insan û ecina da hisabeka gelek mühim dê çêbît. Çünku yê Xaliq ezim; belê ‘îbadet ji bo bilî min êkedî tête kirin; yê rizqî didet ezim; belê şukurdarî bo ğeyrî min tête kirin.

(et-Teberanî, Müsnedu'ş-Şamîyyîn; el-Beyhaqî, Şu'abu'l-İman; ed-Deylemi, Musnedu'l-Firdews.)

Dümahîkê em dibêjîn: Qet'îyen bê 'eqîde çênabît. Çünkü 'eqîde asas û temelê dinîye. Heta 'eqîda rast neête zanîn di dînî jî da gelek alozî û şaşî dê çêbın. Wekî vi zemanê em têda; gelek fikr û 'eqîde, mezhebêt xiryay û hizb û cima'etêt şaş yêt heyn. Jiber hindê di vî halê em têda bes divêt em bere xwe bideyne 'eqîda rast û durust ya selefêt me yêt salih. Fehm kiri û li düv çûyn. Ev kitêba 'eqîdê "RONAHÎYA ÎMANÊ" ya rêzdar seydayê bi qîymet Seyda Mela Muhammed Hakkarî /Pirosî piştî kar û xebateka mezin ya hatîye çêkirin. Gelek meselêt şaş û xelet ku heta vê gavê jî rast têne zanîn xudê jê razîbît liber ronahîya qur'ana pîroz û hedîsêt pexemberî yêt sehîh û ji gelek çavkanîyêt zalal delîlet rûn û aşkera yêt înadîn bome û xeletîya wa yê beyan kirî. Em jî, spasîya seydayê hêja dikeyn jiber vê xizmeta bo Îslamê û busulmana kirî. Xudê Te'ala vî kare wî yê xalis roja qîyametê bikete ronahî û xilasî bo wî û deyku babêt wî û malbata wî. Xudê Te'ala 'emrekê bi bereket ,sihhet û afîyet bidetê li ser îmanê.

"EY REBBÊ ME! TU VÊ Jİ ME QEBUL BİKE; BÊ ŞUPHE TU SEHDİKEY,TU DIZANÎ."(BAKARA,2/127)

XUDAYÊ MİN! 'EMELÊT ME HEMÎYA SALİH BİKE,JİBO ZATÊ XWE XALİS BİKE,ÇU TİŞTÎ Jİ 'EMELÊT ME NE BO XEYRÎ XWE, BES BO XWE QEBUL BIKE…AMİN.

*Mela Nureddîn YİĞİT*

# PÊŞGOTIN

Bismillahirrahmanirrahîm

Medh û sena bo Xudê Te'ala bin, em hema her medh û sena bo Wî bitinê dikeyn, em harîkariyê her ji Wî bitinê dixwazîn, û her bo xwe daxwaza 'efûkirnê ji Wî bitinê dikeyn. Em bo xwe hîvî û daxwazê ji Xudê Te'ala dikeyn ku Ew, me hemyan biparêzît û sitare biket ji şer û xirabiyêt nefsa me û ji guneh û nebaşiya kar û 'emelêt me. Xudê Te'ala kê bigehînîte ser rêka heq û hîdayetê, qet kesek neşêt wî bixirînît û di ser rê da bibet, û her dîsa jî heçiyê Ew bixirînît û di ser rê da bibet qet kesek neşêt hêdî wî bînîte ser rêka heq û hîdayetê.

" Eşheddu'el-Lailaheillallah, we eşhedu'enne Muhemmede'r-Resûlullah."

Xudê Te'ala dibêjît:

يَآ اَيُّهَا الَّذِينَ اَمَنُوا اتَّقُوا اللهَ حَقَّ تُقَاتِهِ وَلاَ تَمُوتُنَّ اِلاَّ وَاَنْتُمْ مُسلِمُونَ

"Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Hûn ji Ellahu Te'ala bitirsin; (bê-emriya Wî neken) belê, bi tirsaneka we ku hejî mezinahiya Wî bît û hûn êka we biken ku hûn Busulman bimrin (anku li ser 'eqîda rast û durust)".[1]

Xudê Te'ala dibêjît:

يَآاَيُّهَا النَّاسُ اتَّقُوا رَبَّكُمُ الَّذِى خَلَقَكُمْ مِنْ نَفْسٍ وَاحِدَةٍ وَخَلَقَ مِنْهَا زَوْجَهَا وَبَثَّ مِنْهُمَا رِجَالاً كَثِيرًا وَنِسَآءً وَاتَّقُوا اللهَ الَّذِى تَسَآءَ لُونَ بِهِ وَالْاَرْحَامَ اِنَّ اللهَ كَانَ عَلَيْكُمْ رَقِيبًا

1 Sûreta Alî 'Îmran 102

“Ey gelî mirovan! Hûn ji wî Rebbê xwe bitirsin; (bê-emriya Wî neken), Ew ê ku hûn hemî ji êk nefsa bitinê (anku ji Ademî (‘eleyhî s-selam) xuliqandîn û peyda kirîn û paşê kabaniya wî jî Hewwa jî (Xudê jê razî bît) her ji wî bi xwe xuliqandî û çêkirî û ji wan her duka jî gelek zelam û jinik yêt xuliqandîn û li ser rûyê ‘erdî yêt belav kirîn. Vêca hûn hema her ji wî Ellahî bitinê bitirsin; (bê-emriya Wî neken), Ew ê ku hûn bi navê Wî bo xwe hîviya ji êkûdu diken (demê ku hûn dibêjne êkûdu: Tu bo xatra navê Xudê key) û hûn her baş li heqê mirovahîniyê dihişyar bin (pişta xwe nedene êkûdu û kesûkarêt xwe). Bê şik Ellahu Te‘ala yî çavdêre li ser hewe (her hewe vednêrît û haj hewe heye; ka hûn çî dibêjin û diken).”[2]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَاۤاَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُوا اتَّقُوا اللهَ وَقُولُوا قَوْلاً سَدِيدًا يُصْلِحْ لَكُمْ اَعْمَالَكُمْ وَيَغْفِرْ لَكُمْ ذُنُوبَكُمْ وَمَنْ يُطِعِ اللهَ وَرَسُولَهُ فَقَدْ فَازَ فَوْزًا عَظِيمًا

“Ey gelî ewêt hewe îman û bawerî înandî! Hûn ji Ellahu Te‘ala bitirsin; (bê-emriya Wî neken), hûn hema her gotina heq û rast bêjin (anku hûn her bi dev û kirnêt xwe palêt heqiyê bin). Ellahu Te‘ala dê bo hewe şol û karêt hewe pêk înît (û dê berê hewe dete ser rêka heq û rast) û dê bo hewe gunehêt hewe jî ‘efûket. Heçî kesê ji dil bi gotina Ellahu Te‘ala; Qur’ana kerîm û bi hedîsêt Pêxemberê Wî yêt rast û durust ‘emel biket, bê şik ev e ew, serferaz bû û serket; bi serketineka gelek mezin.”[3]

Piştî vê hindê, bê şik axiftin û gotina ji hemî axiftin û gotina ya rast û durustir hema her kelamê Xudê Te‘ala ye (Qur’ana kerîm e) û rêka ji hemî rêka jî çêtir û baştir ew rêk e; ya ku Pêxemberê Xudê Te‘ala Muhemmed-selat û

2 Sûreta Nîsa 1
3 Sûreta Ehzab 70-71

selam li ser bin- pê hatî. Belê, kar û ‘emelêt ji hemî kar û ‘emela dixirabtir; ew kar û ‘emelin (ew bîd‘ene); ewêt ku ji nû hatîne çêkirin (ewêt ku hindeka hema ji def xwe bi navê dînî çêkirîn û avêtîne di nav dînî da).

Heçî tiştê ji nû hatiye çêkirin bi navê dînî û kiriye di nav dînî da, ew hemî bîd‘ene, û ew bîd‘e hemî jî egerin bo delalet û xirhanê; bîd‘e li gel xudanê xwe (anku li gel wî kesî yê ku ew bîd‘e çêkirî û yê pê ‘emel diket jî li roja qiyametê) pêk ve ew hemî dê çine di nav agirê cehennemê da.[4]

selat û selamêt Xudê Te‘ala li ser wî û li ser binemala wî ya paqij û pak û heval û hogirêt wî bin û her dîsa li ser wan îmandaran jî bin; ewêt ku bi qencî û çakî heta roja qiyametê bi viyan li ser rêka wî diberdewam.

4 Xutba Pêxemberî ya muhtaciya

# DESTPÊKİRİN

Eve ez jî dest pêdikem û dibêjim; her wekî wî seydayî Ew ê ku dibêjît: (Destpê dikem ez bi navê Ellah, meqsûd Ew e her bo me wellah).

Xudê Te‘ala dibêjît:

رَبِّ اشْرَحْ لِي صَدْرِي وَيَسِّرْ لِي أَمْرِي وَاحْلُلْ عُقْدَةً مِّن لِّسَانِي يَفْقَهُوا قَوْلِي

“Ey Rebbê min! Ez hîviyê ji Te dikem; ku Tu singê min bo min baş berfireh bikey (tijî îman û bawerî bikey). “Tu vî karê min bo min bi sanahî bêxe. Tu vê girêka li ezmanê min veke; da ku ew di axiftina min bigehin û fehim biken.”[5]

Xudê Te‘ala dibêjît:

رَبَّنَا افْتَحْ بَيْنَنَا وَبَيْنَ قَوْمِنَا بِالْحَقِّ وَأَنْتَ خَيْرُ الْفَاتِحِينَ

“Ey Rebbê me! Tu di navbeyna me û di navbeyna qewmê me da, bi heqî û ‘edaleta xwe hukmî bike, nê hema her Tu ji hemî hukumdara yî çêtir û baştirî.”[6]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَذَكِّرْ فَإِنَّ الذِّكْرَى تَنْفَعُ الْمُؤْمِنِينَ

“(Ey Muhemmed!) Tu hema her bi vê Qur’anê we‘z û şîreta li wan bike; bîne bîra wan. Bê şik şîret û bîr înandin mefayî didete îmandaran.”[7]

---

5 Sûreta Ta ha 25
6 Sûreta E‘raf 89
7 Sûreta Zariyat 55

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ هَلْ يَسْتَوِي الَّذِينَ يَعْلَمُونَ وَالَّذِينَ لا يَعْلَمُونَ إِنَّمَا يَتَذَكَّرُ أُوْلُوا الأَلْبَابِ

“Erê ma yêt dizanin (anku ‘alim û zana) û yêt cahêl û nezan şitî êk in? Bê şik hema her aqildarêt xudan hiş û bîr bitinê vê hindê dizanin û têdigehin.”[8]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَرْفَعِ اللَّهُ الَّذِينَ آمَنُوا مِنْكُمْ وَالَّذِينَ أُوتُوا الْعِلْمَ دَرَجَاتٍ

“Ellahu Te‘ala dê derecêt wan bilin diket ewêt ku ji hewe îman û bawerî înandî, belê merteba wan jî; ewêt ku ‘îlm û zanîn bo hatî hêj pitir dê bilind ket.”[9]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّمَا يَخْشَى اللَّهَ مِنْ عِبَادِهِ الْعُلَمَاءُ إِنَّ اللَّهَ عَزِيزٌ غَفُورٌ

“Miheqeq ji ‘ebdêt (Ellahu Te‘ala) hema her yêt ‘alim û zana bitînê bi rast î û ji dil ji Ellahu Te‘ala ditirsin; (xwe ji bê-emriya Wî diparêzin). Bê şik Ellahu Te‘ala, yî xurt û jêhatî ye û gelekî ‘efûkere.”[10]

Xudê Te‘ala dibêjît:

كُنتُمْ خَيْرَ أُمَّةٍ أُخْرِجَتْ لِلنَّاسِ تَأْمُرُونَ بِالْمَعْرُوفِ وَتَنْهَوْنَ عَنِ الْمُنكَرِ وَتُؤْمِنُونَ بِاللَّهِ

“Ey gelî ummeta (Muhemmedî -selat û selam li ser bin!) Bi rast î, her hûn nin ummeta ji hemî ummeta çêtir û

8 Sûreta Zumer 9
9 Sûreta Mucade 11
10 Sûreta Fatir 28

baştir bo mirovan hatîn û peydabîn; çûnkî hûn emrî bi kirna başiyê diken û nehya xelk û ‘alemê ji kirna xirabiya diken û hûn ji dil îman û baweriyê tînin bi Ellahu Te‘ala.”[11]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لُعِنَ الَّذِينَ كَفَرُوا مِن بَنِي إِسْرائِيلَ عَلى لِسانِ داوُدَ وعِيسى ابْنِ مَرْيَمَ ذَلِكَ بِما عَصَوْا وكانُوا يَعْتَدُونَ كانُوا لا يَتَناهَوْنَ عَنْ مُنْكَرٍ فَعَلُوهُ لَبِئْسَ ما كانُوا يَفْعَلُونَ

“Le‘net ya li wan hatiye kirin; ewêt ku ji dûndeha Îsraîlî (anku ji zûriyeta Ye‘qûb Pêxemberî selam li ser bin) kafir bîn, li ser ezmanê Dawudî û ‘Îsayê kurê Meryema pak û paqij (anku di Zeburê û Încîlê da). Çûnkî wan bêemriya Ellahu Te‘ala dikir; ew zêde ji hedê xwe derdiketin; qet wan Cûhya nehya êkûdu nedikir ji wan guneh û xirabiya; ewêt ku wan bi aşkirahî dikirin. Nê ew tiştê wan dikir gelekî xirab û kirêt bû!”[12]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلْتَكُنْ مِنْكُمْ أُمَّةٌ يَدْعُونَ إِلَى الْخَيْرِ وَيَأْمُرُونَ بِالْمَعْرُوفِ وَيَنْهَوْنَ عَنِ الْمُنْكَرِ وَأُولَئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ

“(Ey gelî îmandaran!) Bila ji hewe her kom û cima‘etek hebît ku ew gazî bikene xelk û ‘alemê bo kirna qencî û çakiyan; anku emrî bi kirna başiya biken û nehya xelk û ‘alemê biken ji kirna xirabî û nebaşiya. Eha hema her ew in; yêt serferaz û rûspî.”[13]

11 Sûreta Alî ‘Îmran 10
12 Sûreta Maîde 78-79
13 Sûreta Alî ‘Îmran 104

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّا هَدَيْنَاهُ السَّبِيلَ إِمَّا شَاكِرًا وَإِمَّا كَفُورًا

“Bê şik Me, rêka rast ya nişa wî anku mirovî dayî; yan ew dê yî şukurdar bît bo Rebbê xwe, yan jî ew dê înkara qencî û çakiyêt Wî ket.”[14]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَهَدَيْنَاهُ النَّجْدَيْنِ

“Nê Me du rêk (anku rêka baş û rêka xirab) bo wî yêt aşkira kirîn û nîşa wî nedayn?”[15]

Xudê Te‘ala dibêjît:

هُوَ الَّذِي خَلَقَكُمْ فَمِنكُمْ كَافِرٌ وَمِنكُم مُّؤْمِنٌ وَاللَّهُ بِمَا تَعْمَلُونَ بَصِيرٌ

“Ey gelî mirovan! Her Ellahu Te‘ala ye, yê ku hûn xuliqandîn û dayin, paşê hindeka ji hewe îman û bawerî neînand kafir bin û hindeka jî îman û bawerî înand û bine îmandar. Ellahu Te‘ala wan kar û ‘emela; ewêt ku hûn diken Ew wan hemyan bitimamî dibînît.”[16]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ يَا أَيُّهَا النَّاسُ قَدْ جَاءَكُمُ الْحَقُّ مِن رَّبِّكُمْ ۖ فَمَنِ اهْتَدَىٰ فَإِنَّمَا يَهْتَدِي لِنَفْسِهِ ۖ وَمَن ضَلَّ فَإِنَّمَا يَضِلُّ عَلَيْهَا ۖ وَمَا أَنَا عَلَيْكُم بِوَكِيلٍ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje: “Ey gelî mirovan! Bê şik ev e, ji layê Rebbê hewe ve bo hewe heqî û rast î (anku Qur’ana kerîm) hat. Vêca heçî kesê bête ser rêka heq, bê

14 Sûreta Însan 3
15 Sûreta Beled 10
16 Sûreta Texabun 2

şik xêra wê hindê hema her bo wî bi xwe ye û heçî kesê di ser rê da jî biçît û bixirhît, bê şik webal û guneha wê bo wî ye. Ez ne wekîl im li ser hewe (ku bi te'dayî hewe bînme ser rêka heq), ya min hema gotin û ragehandine."[17]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَقُلِ الْحَقُّ مِن رَّبِّكُمْ ۖ فَمَن شَاءَ فَلْيُؤْمِن وَمَن شَاءَ فَلْيَكْفُرْ

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje: "Ev Qur'ana ji layê Rebbê hewe ve ya hatî ya heq û rast e. Vêca heçî kesê hez biket bila îman û baweriyê pê bînît û heçî kesê hez biket jî bila ew ji kore fehmiya xwe înkara heqiyê biket."[18]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلَا يَخَافُونَ لَوْمَةَ لَآئِمٍ ذٰلِكَ فَضْلُ اللّٰهِ يُؤْتِيهِ مَنْ يَشَاءُ وَاللّٰهُ وَاسِعٌ عَلِيمٌ

"Qet ew (ye'nî ew îmandarêt dînî dibêjin) natirsin ji lomehiya çu lomekaran. Ev e, dan û kerema Ellahu Te'ala ye, Ew didete wî yê ku Ew hez biket. Kerem û rehma Ellahu Te'ala geleka berfireh e û Ew yî zanaye bi hemî tiştan."[19]

Xudê Te'ala dibêjît:

لِيَهْلِكَ مَنْ هَلَكَ عَنْ بَيِّنَةٍ وَيَحْيَا مَنْ حَيَّ عَنْ بَيِّنَةٍ

"(Hûn her dînî bêjin; ey gelî îmandaran!) Da ku ewêt diçine hîlakê bi aşkira kafir bibin û ji hewe veder bibin û

17 Sûreta Yunûs 108
18 Sûreta Kehf 29
19 Sûreta Maîde 54

herdîsa jî da ewêt îman û bawerî înandî jî bi delîlêt rohn û aşkira îman û baweriyê bînin.”[20]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِن تَكْفُرُوا فَإِنَّ اللَّهَ غَنِيٌّ عَنكُمْ ۖ وَلَا يَرْضَىٰ لِعِبَادِهِ الْكُفْرَ ۖ وَإِن تَشْكُرُوا يَرْضَهُ لَكُمْ ۗ

“(Ey gelî mirovan) Heke hûn bibne kafir, bê şik Ellahu Te‘ala, qet çu minet bi hewe nîne, belê Ew bo ‘ebdêt xwe bi kafiryê ne yî razî ye. Nê heke hûn şukra Wî biken Ew dê bi wê hindê ji hewe razî bît.”[21]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قَدْ أَفْلَحَ مَنْ زَكَّاهَا

“Bê şik ew kes yî rûspî û serferaz e; ew ê ku nefsa xwe pak û paqij kirî û diket.”[22]

Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî: Bila çu zelam ji hewe heqiyê ji tirsa xelk û ‘alemê da ne veşêrin; gava wî heqî zanî yan dît yan jî guhlê bû; divêt ew bêtirs heqiyê bêjît û aşkira biket.[23]

Sehlê kurê Se‘idî (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin-gote îmamê ‘Elî (Xudê jê razî bît): (Nê heke Xudê Te‘ala zelamekî li ser destê te bînîte ser rêka heq û hîdayetê bo te ji revyêt hêştirêt sor gelek bi xêrtir û baştir e).[24]

20 Sûreta Enfal 42
21 Sûreta Zumer 7
22 Sûreta Şems 9
23 Elbanî (Xudê jê razî bît). Sîlsîletus-Sehîhe
24 Buxarî

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَلَوْلَا نَفَرَ مِن كُلِّ فِرْقَةٍ مِّنْهُمْ طَائِفَةٌ لِّيَتَفَقَّهُوا فِي الدِّينِ

“Vêca bila ji her cema‘etekê kom û birek bimînît da ku ew baş xwe di dînî da zana û şareza biken.”[25]

Mu‘awiyêtê kurê Ebu Sufyanî (Xudê ji wan her duka razî bît dibêjît; Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- yê gotî: (Heçî kesekê Xudê Te‘ala xêra wî bivêt; Ew dê wî di dînî da zana, beled û bisteh ket.[26]

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- dibêjît: (Xudê Te‘ala wî kesî bêxîte di nav xêr û xweşiyan da; yê ku li demê tiştek ji me guhlê bû, ka çewa wî guhlê biye ‘eynen ew wesa, wî tiştî zar me veguhêzît; bo êkî dî bêjît, nê gelek cara yê ku bo tête gotin, ew ji wî kesî yê bo wî gotî pitir fehim diket û têdigehît).[27]

‘Ebdullahê kurê ‘Emrê kurê ‘Asî (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît; Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- yê gotî: (Hûn zar min; (anku ewa ku hewe ji min guhlê dibît) bo xelk û ‘alemê bêjin û belav biken, welewku ayeteka bitinê jî bît).[28]

Îmam Malikê kurê Enes; Îmamê warê muhaciriyê (Xudê jê razî bît) dibêjît: Ev ummeta he Îslah nabît û çênabin; îleh ew bi wî tiştî dê Îslah bin û çêbin yê ku pêşiyêt (Selefêt salih) pê Îslah bîn û çêbîn; vêca ew tiştê wê rojê wan dîn hisab nekirî; pê ‘emel nekir bît evroke ew tişt nedîne (em jî pê ‘emel nakeyn).[29]

---

25 Sûreta Tewbe 122
26 Muttefequn ‘eleyh
27 Tirmizî, ya hesene
28 Sûreta Beqere 174
29 Şîfa, Qadî ‘Eyad

# ‘ALİM Û ZANAYÊT ME

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَآأَيُّهَا النَّاسُ اتَّقُوا رَبَّكُمُ الَّذِى خَلَقَكُمْ مِنْ نَفْسٍ وَاحِدَةٍ وَخَلَقَ مِنْهَا زَوْجَهَا وَبَثَّ مِنْهُمَا رِجَالاً كَثِيرًا وَنِسَآءً

“Ey gelî mirovan! Hûn ji wî Rebbê xwe bitirsin; (bê-emriya Wî neken), Ew ê ku hûn hemî ji êk nefsa bitinê (ku ji Ademî ‘eleyhî s-selam) xuliqandîn û peyda kirîn û paşê jinika wî jî anku Hewwa (Xudê jê razî bît) her ji wî bi xwe xuliqandî û çêkirî û ji wan her duka gelek zelam û jinik yêt xuliqandîn û li ser rûyê ‘erdî yêt belav kirîn).”[30]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا النَّاسُ إِنَّا خَلَقْنَاكُم مِّن ذَكَرٍ وَأُنثَى وَجَعَلْنَاكُمْ شُعُوباً وَقَبَائِلَ لِتَعَارَفُوا إِنَّ أَكْرَمَكُمْ عِندَ اللَّهِ أَتْقَاكُمْ إِنَّ اللَّهَ عَلِيمٌ خَبِيرٌ

“Ey gelî miroa! Bê şik Me hûn hemî ji zelam û ji jinkekê (ji Adem û Hewwayê -silav li ser wan bin-) yêt xuliqandîn û dayn, û Me hûn yêt kirîne milet, qewm, qebîle û ûcaxêt cuda cuda; da ku hûn êkûdu qebûl biken û binyasin, (bê zilm û te‘dayî û bi êmnahî li gelêk dirêjiyê bidene jîn û jiyara xwe û da ku hûn ji hemî lave li heq û huqûqêt êkûdu dihişyar bin). Bê şik yê ji hewe hemyan yî çêtir û baş li nik Ellahu Te‘ala hema her ew e; yê ku ji hewe hemyan yî mutteqî û dîndartir. Bê şik Ellahu Te‘ala, yî zana ye û yî agehdar e bi hemî tiştan).”[31]

Ji Ebû Hureyreyî (Xudê jê razî bît) ya hatiye riwayet kirin ew dibêjît; Pêxemberê Xudê (selat û selamêt Xudê li

30 Sûreta Nîsa 1
31 Sûreta Hucurat 13

ser bin) yê gotî: …Ey gelî ‘ebdêt Xudê! Hûn hemî bi biratî pêkve bibne ‘ebdêt Xudê (yêt qenc û çak) her wekî ku Xudê emrê hewe kirî. Busulman birayê Busulmanî ye; Busulman zilmê li birayê xwe yê Busulman naket, Busulman çû caran birayê xwe yê Busulman rezîl û şermizar naket. Dûvra Pêxemberî îşaret kire singê xwe û got: Teqwatî eve ye, teqwatî eve ye di vê derê da. Bo mirovê Busulman hema ev guneh e bitinê bese; ku heke ew heqaretê li birayê xwe yê Busulman biket (bişkênît û bêsiyanet biket). Her Busulmanekî xûna wî, namûsa wî û malê wî li ser hemî Busulmana (mirovan) ya heram e. Bêguman Xudê Te‘ala berêxwe nadete bejin û bala hewe, şikil û sîmayê hewe, belê Ew hema her berêxwe didete dilêt hewe, kirin, kar û ‘emelêt hewe.[32]

Herdîsa Pêxemberê Xudayê Jorî (selat û selam li ser bin) dibêjît: Hûn baş bizanin Xudayê hewe hemyan êk e, babê hewe hemyan êk e (Adem Pêxembere -silav li ser bin-), Pêxemberê hewe hemyan êk e (anku Muhemmed Pêxembere -selat û selam li ser bin-), bizanin qedrê yê ‘Ereb di ser wî ra nîne yê ku ne yî ‘Ereb bît, mirovê rengê wî yî sor, ew di ser wî ra nîne yê ku rengê wî yî reş, bê şik yê ji hewe hemyan yî çêtir û baştir li nik Ellahu Te‘ala hema her ew kese; yê ku ji hewe hemyan yî mutteqî û dîndartir bît.[33]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ إِخْوَةٌ

“(Bê şik îmandar (Busulman) hemî birayêt êkûdune (anku birayêt Îman û baweriyê ne).”[34]

32 Muslimî
33 Îmam Ehmed Bib Hembel Musned
34 Sûreta Hucurat 10

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمِنْ آيَاتِهِ خَلْقُ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ وَاخْتِلَافُ أَلْسِنَتِكُمْ وَأَلْوَانِكُمْ ۚ إِنَّ فِي ذَٰلِكَ لَآيَاتٍ لِلْعَالِمِينَ

“Ji nîşanêt (heyîn û qudreta) Ellahu Te‘ala ye, ku Wî (her heft) ‘esman û ‘erd û ezman û reng û rûbarêt hewe; ewêt ku ne wekî êk û di jêk cuda hemî bi qudreta xwe yêt xuliqandîn û dayn. Bê şik di van tiştan da bo mirovêt ‘alim û zana gelek ‘elamet û nîşan yêt heyîn; ku pê Xudayê xwe baş binyasin.”[35]

Dê vêca da jinûka em bêyne ser mijar û babetê xwe, yê ku me mirad û mexset pê hey; anku behsê ‘eqîde; bîr û baweriya Ehlê- Sunnet û cima‘etê; ‘eqîda Selefêt salih bikeyn, nê sexmîratî vê hindê me jî ev esera xwe bi ezmanê kurdî ya nivîsî û daye qelemî.

Me divêt bo hişyarî bêjim; kitêb, axivtin û gotinêt ehlê felsefê û kelamciya di tijî neqd û tenaqud in, jixwe mentiqcî û zanayêt felsefê, qet ew êkûdu qebûl naken; ew êkûdu rezîl û red diken, çunku axivtin û gotinêt wan hemî sefsetene; di wehmî û bêbinîşe ne, qet ji çu rexan ve bi ser êkûdu ve naçin.

Belê sed heyf û mixabinî! Nê her wekî em hemî baş dizanîn û bi çavêt xwe jî dibînîn, ev milletê me yê Busulman bi gelek hîle û gotinêt şeytanî ji ‘eqîde; ji bîr û baweriya Ehlê-Sunnet û cima‘etê; anku ji ‘eqîda Selefêt salih yêt hatîne dûrkirin; ev e bi sal û zemanan û bi hostahiyeka ‘ecêbî ew yêt hatîne şelandin û berê wan yê daye rexekî dî; egera vê çendê jî eve ye; çunku gelek ji ‘alim û zanayêt milletê me yêt kevin, nexasima ji şa‘irêt berahîkê bo nimûne wekî; Baba Tahirê ‘Uryan (935-1010). Melayê

35 Sûreta Rom 22

Cizîrî (1570-1640), Ehmedê Xanî (1650-1707), Feqiyê Teyran (1590-1660), Melayê Bateyî (1417-1491) û gelekêt dî jî ew hemî li ser bîr û baweriya felsefa Kelamciya, zêdebarî li ser rêbaza tesewufê; anku Hulul û Îtîhadê; Wehdet el-Wucûdê bin; di bîr û baweriya xwe da.

Ji xwe hîngê ‘alim û zana, rêber û rewşenbîrêt miletê me jî hema her ew bitinê bin! Ji hedî zêde bîr û baweriyêt van zanayêt me gotîn ji rexê ‘eqîdê ve te’sîr ya li miletê me kirî û heta vê gavê jî te’sîra wan ranebiye li ser mejiyê gelek cahêl û nezanan!

Jixwe di dûv wan hemyanra jî ew şêxê bi navê Mewlana Xalidê Şehrezorî (1773-1826) meşhur, ewî ji wan hemyan pitir bîr û baweriyêt tesewwuufê yêt belav kirin û ji hedî zêde yê bi rewaç êxistin di nav vî miletê me da.

Bo nimûne dê ka werin da em guhê xwe bideyne

Melayê Cizîrî ka em dê çewa di vê gotina wî gehîn ev e li demê ku ew dibêjît:

Ger bidit dest, tewafa pêy û destan bigirim

Wê mecalê bi wuqûfa ‘Erefatê nadim

Ez û yar ger şevekê her du hem axûş bibin

“Leylet-ul qedr”e me ew şev bi “Berat’ê nadim[36]

Gelo ev e ew behsê kê diket???!!!

Dê ka da di dûv ra em guhê xwe bideyne Ellahu Te‘ala ka ew di van her du ayetêt jêrî da çî dibêjît:

---

36 Dîwana Melayê Cizîrî

لَيۡسَ كَمِثۡلِهِۦ شَيۡءٞ

"Qet çu tişt û kesek şitî Ellahu Te'ala nîne û nabît."[37]

فَلَا تَضۡرِبُواْ لِلَّهِ ٱلۡأَمۡثَالَ

"Ey gelî mirovan! Vêca hûn bo Ellahu Te'ala (di zat û sîfetêt Wî da) çu hevkûf û hevala çêneken."[38]

Hîngê di medresêt welatê me da, şêx û mela gelek li ser xwandina şê'ra nexasima xwandin û jiberkirina şê'rêt dîwana Melayê cizîrî, Ehmedê Xanî û mewlîda mela Hisênê Bateyî radiwestan.

Wan şê'ir û mewlîd bideng û awazêt 'ecêbî digotin, heta hîngê dîwana Melayê cizîrî, Mem û zîna Ehmedê Xanî û mewlîda mela Hisênê Bateyî bo feqiya bi dersînî jî di hate gotin, jixwe di nav cahêl û xelk û 'alemê da jî bi şev û roj dîwana Melayê cizîrî û mewlîda mela Hisênê Bateyî her dihatine xwandin, geleka ji wan sofî û cahêla û heta hinde jinka jî dîwana Melayê cizîrî û mewlîda mela Hisênê Bateyî jiber dizanî, û wan hema her bo xwe û bo êkudû li nav koçk û civata da digotin.

Heta ji ya hindeka ji wan ve; mewlîd ruknekî dînê Îslamê ye yan jî cuzyeke ji Qur'ana Pîroz; wan wesa bi qedir û viyan berê xwe didayê û mejiyê xwe pê mûjûl dikir!

Belê ya fer û pêtivî ye em bizanîn û bo xelk û 'alemê jî bêjîn; xwandina van şê'r û mewlîda hemyan; çî ya 'erebî, tirkî û kurdî bît ne ferz e, ne wacib e, ne sunnet e û heta xwandina wan ne xêr e jî; çûnku ev mewlîde ditijî neweyî û xeletî ne.

37 Sûreta Şura 11
38 Sûreta Nehl 74

Nê heke tu ayeteka Qur'ana Pîroz ya ku ji hemi ayeta kurtir yan jî hema sûreta Qul hûwallahu ehed carekê bixûnî xêra wan hizar hizar cara ji xwandina van şê'r û mewlîda hemyan bi xêrtir  û baştir e, nê ev e hinde cahêla hema ji dev xwe xwandina van mewlîda bo xwe ya kirî ye 'edet, heta li demê mewlîd tête xwandin hinde mirovêt cahêl û nezan nexasima jinik; gelek new'êt te'amî û xwarinê didane ber xwandina mewlîdê; ev e bo tiberik û da ku bereket ji ber xwandina mewlîdê bikevîte nav rizqê wan û mala wa! Qet çu tiştê hosa nînin, ev e hemî direw û çîrokin.

Belê divêt xelet tê negehîn; gava te got mewlîdek li ser min xêr bît yan jî nezir bît, ew dibîte nezir li ser te, ew xwarina hatiye nezir kirin divêt ew xwarin her bête dan, qet hewcey xwandina metnê van mewlîda nîne, çunku me berî nihe jî gotibû û aşkira kirbû; xwandina wan mewlîda ne ferz e, ne wacib e, ne sunnet e û heta xwandina wan ne xêr e jî. Mixabinî heta bi navê dînî û melatiyê, kar û 'emelê hindeka hema yê biye xwandina mewlîdê, xitma, dewra salê, çêkirna nivîştiya û îsqata mirya, heta hindeka ji wan ya êxstiye di serê cahêl û nezanan da; ku fer e şukraniya nivîştiya bête dan, ew dibêjne wan; nivîştî bi tiştî, nivîştiya bê tişt xudanê xwe kuşt!

Welhasil, bi van bîd'a û van tiştêt hosa di bê'asas û bê bingeh gele sal û zemanan bi hostayî wan em ji Qur'anê yêt dûr kirin û em yêt xapandin! Hîngê hindeka ji wan şêx û mela wel xelk û 'alemê kirbû; ew ji Qur'anê direvîn; jê ditirsan; wan ne diwêra destê xwe bikenê û binik ve biçin! Jixwe hîngê Qur'an û Qur'an xûn jî gelek û gelek dikêmbin di nav miletê me da!

Rast e hindeka ji wan şêx û melayêt hîngê dersa Qur'anê ya gotî û ya nîşa hindeka dayî, belê qet wan me'na Qur'anê û ka Qur'an çî dibêjît û emr diket bo kesekê ne negotiye û qet kes tê ne gehandiye!

Nê heke mirov ji rexê dînî da û nexasima ji rexê ‘eqîdê û bîr û baweriyê da berê xwe bidete halê vî miletî û hûrik guhê xwe bi ser da digirît, agir berdibîte dilê mirovî; ev e hindî hinde cembaz û nezana bi navê dînî ya înandî ye serê wan; wan bo xwe yarî û tirane yê bi aqilê vî miletê kirîn; ev e bi vegirtina fehilkêt Qur'anê, bi firotina xitma û dewra salê, îsqatê û niviştiya, welhasil, wan bo xwe tucaret ya bi Qur'anê û dinî kirî di nav vî miletî me da!

Dewlet serê geleka ji wan şêx û melayêt hîngê hêj bi rast î û durustî miletê me îman û baweriya xwe fehm ne kirye, di dînî xwe ne gehiştine, anku bi rast î û durust î Busulman ne biyne, ma ferezeka nihe em dibêjîn; em Busulmanîn, nê ji rexê Qur'anê da em dişelandîne! Qur'an bo me ne hatiye gotin, em nuzanîn ka Xudayê me çî dibêjîte me û çî ji me dixwazît!

Heta van salêt berê jî Qur'an bi xwe di nav miletê me da gelek dikêm bûn, ewêt heyn jî bahra pitir ji wan diperitî bin û ew jî ew bin; ewêt ku bi desta hatîne nivisîn, ew Qur'an jî hîngê li ser dika, di kaloxka da û bi dîwara ve toz li ser wan stûr dibû, nexasima di mizgefta da, di bêxudan bîn; çunku ew ne dihatne xwandin! Jixwe hîngê qet kesê me‘na wî jî bo kesekê nedigot, hîngê bi timamî Qur'ana kerîm ya êxsîr kîrî bû di nav miletê me da!

Heta van salêt berê jî di medresêt welatê me da Qur'an û kitêbêt hedîsêt Pêxemberî ne dihatine xwandin û me‘ne kirin! Hingê wan ev tişte hind bi muhîmî ne digirt, heta vê gavê jî rast e kitêbêt tefsîra û hedîsa di zehvin / mişene û li dev geleka jî yêt heyîn, belê qet pûte bi wan naête kirin; na xûnîn û berê xwe nadenê, hema bo tiberk yêt danadîne wêrê!

Heq ew bû ku her dem meqsed û hedef ji heyîna van medresa, nexasima ji xwandina rêzmana ‘Erebî; anku ji

xwandina wan kitêba, ewêt ku ew dibêjinê; kitêbêt rêzê wekî nehwî û serfî û hemî ‘ilmêt dî jî, da ku bi rast î û durustî Busulman di me‘na Qur’anê û hedîsêt Pêxemberî gehiştibane û wan li ber ronahiya Qur’anê û Sunnetê bi fehma Selefêt salih dirêjî daba jîn û jiyara xwe, da di destêt tucarêt dînî da ne ketibane nav vê aloziya hinde giran; ku hema ew bi nav Busulman in!

Ma xwandina Qur’anê ew e; ku hema tu jiber bikeyî û bibye hafizê Qur’anê yan jî hema disera biçî; bêhizir û tefekur? Nê ev e ne xwandina Qur’anê ye, berê xwe bidenê ka çewa sihabiyêt Pêxemberî (Xudê ji wan razî bît) Qur’an dixwand; ew da ji rê ve metnê çend ayeteka ji Qur’anê rast û durust xûnin û paşê ew da li ser me‘na wan ayeta rawestin, û da guhê xwe denê ka ew çî dibêjin, ew da wan hukum û ehkamêt di nav wan ayetada heyin baş fehmken û paşê ew da bi wê; ya ku wan xwandî ‘emel ken; li ser xwe tetbîqken û di dûvra jî ew da bo êkûdu bêjin, çunkî ruha Busulmanetiyê fehmkirna Qur’ana kerîm e, nê Busulmanetiya bêy fehimkirna Qur’ana kerîm direw e û bela serê xudanê xwe ye di dinya û axretê da.

Ya çûyî çû, fer e ji nihe wê ve em hemî pêk ve nexasima ‘alim û zanayêt vî miletê me, em destê xwe danîne ser wijdana xwe her êk ji rexê xwe ve û li cihê lê; ji rêve em xwe baş anegora dînê Îslamê rast û durust bikeyin; anku divêt, em xwe bi têgehiştin û fehimkirna Qur’ana kerîm û hedîsêt Pêxemberî baş museleh bikeyin û law dihosta bîn di gotin û belavkirna dîni

Xudayê Jorî da.

Divêt, em jirê ve dest bi ehlê mala xwe û ‘eyalê xwe, kes û karêt xwe, der û cîranêt xwe bikeyin, îman; baweriyê; ‘eqîda Ehlê-Sunnet û cima‘etê; ‘eqîda Selefêt salih û kar û barêt dînî rast û durust anegora Qur’ana

kerîm û hedîsêt Pêxemberî bo êkûdu bêjîn, ev e ji ber heqê mirovanhiniyê û biratiya Busulmanetiyê,

Xudê Te'ala dibêjîte Pêxemberê xwe :

وَاَنْذِرْ عَشيرَتَكَ الْاَقْرَبينَ

"(Ey Muhemmed!) Tu hema jirêve lêzim û kes û karêt xwe; 'eşîreta xwe bitirsîne (û agehdar û hişyar bike)."[39]

Xudayê Jorî zar Pêxemberî xwe dibêjît:

قُلْ لا أَسْأَلُكُمْ عَلَيْهِ أَجْراً إِلاَّ الموَدّة فِي الْقُرْبى

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje: Ez ji ber vê ya ku ez bo hewe dibêjim, qet çu ucret û heqî ji hewe naxwazim, ev e hema ji ber heqê mirovanhîniyê ye; ku em digehîne êk."[40]

Ya fer û pêtivî ye em hemî nexasima seyda, 'alim û zanayêt me, xwe baş hişyar bikeyin; erk û wezîfê xwe yê berahîkê û mezin bicih bînin; me'na vê Qur'ana kerîm û hedîsêt Pêxemberî; ewêt ku seneda wan ya rast û durust bo miletê xwe bi ezmanê wan; anku bi ezmanê kurdî bo wan rohn û aşkira bikeyin; bi gotin û nivîsînêt xwe bêjîn û belav bikeyin; da ku ew têbigehin û bizanin ka Ellahu Te'ala çî rêk danadiye ber wan, çî dibêjîte wan û ka çî ji wan dixwazît; ku ew pê rabin û biken, çunkî seyda, 'alim û zana waris û mîrat girêt Pêxemberane û nimûnene bo ummetê û hemî dinyayê.

Belê, li şûna vê hindê bahra pitir ji seyda û melayêt me, ji Qur'ana kerîm û ji hedîsêt Pêxemberî pitir, ew gotinêt 'ebda bo 'ebda; bo xelk û 'alemê dibêjin! Heta gelek ji wan seyda û melayêt me yê bi dûv hindeka

39 Sûreta Şû'era 214
40 Sûreta Şûra 23

ketîn, ew hema her medh û senayêt wan diken, bo parî û berjewendiyêt xwe yêt şexsî! wan qet haj Qur'anê û hedîsa nîne! Lewma em hinde dişepilî û alozîn di dînê xwe da û heta di jîn û jiyara xwe da jî! Çunkî em ji Qur'an û sunneta Pêxemberî di bêbahrîn, nê em nuzanîn ka çewa em Busulmanîn û ka dê çî keyn jî!

Belê, musîbet û bela ji hemyan mezintir jî ev e bû; hindeka ji wan şêxêt berê digot: Yê me'na Qur'ana kerîm bo xelk û 'alemê bêjît; ew dê kafir bît! wan ew 'alim jî ewêt ku li ber ronahiya Qur'an û sunnetê bo xelk û 'alemê Tewhîd digot, bi hinde nav û leqeba; ji bêbextî û îftîra li pêşçavêt xelk û 'alemê reş û kirêt dikirin…!

Gelek ji wan şêx û melayêt kore fehim, li demê wan Qur'an dixwand ji ya wan ve, hema ev Qur'ane ya bo wan behsê taxut, muşrîk û kafirêt berê diket, qet behsê yêt nihe naket û yan jî ji ya wan ve, ev Qur'ane hema ya bo Pêxemberî û sihabiyêt wî bitinê hatî û hind, qet behsê vî zemanî tê da nîne û naket! Qet wan xwe tê ne digehand ku ev Qur'ane ya li gel wan taxivît, ev Qur'ane yasa û qanûneka Xudayî ye; divêt, Busulman wê di nav xwe da û bo xwe bikene hekem; her pê 'emel biken di jîn û jiyara xwe da!

Ferz e, em baş bi zanîn Busulmanetiya bêy Qur'an qet'iyen nîne û nabît jî, ji xwe li roja qiyametê jî jirêve pisyara vê Qur'anê dê ji me hemyan ête kirin; ka me çend 'emel pê kiriye û çî xizmet bo wê kiriye di vê dinya yê da!

Berê, gava hindeka ji şêx û mela Qur'an nîşa bûçûka dida wan sûreta kafîrun nîşa wan nedida; wan digote wan guneh e; hûn dê xelet ken û wan sûreta İnşîrah dixwand û girêk li bendika didan û pif dikirê bo ta û wan gava heywanê êkî berze biba, sûreta weş-Şemsî wedduhaha bo girêdana devê Gurgan dixwand, sûreta Kewser bo girêdana devê Hirçan dixwand, sûreta Wedduha

welleleyîlî bo girêdana devê Berazan dixwand, wan ev sûrete dixwandin û pif dikire devê kêra û digirtin yan jî pif dikire benka û girê didan, wan cahêlêt zalim bi van tiştêt hosa yêt bêbinîşe û xurafe serê miletê me girêdida!

Sed heyf û mixabinî! Ev Qur'ana kerîm, ewa ku kelamê Xudayê Jorî ye, eva hinde ya hejî, berketî û hemî hukum û ehkam; emr û nehî, û bo mirovan rêk û rêbaza hîdayetê û qanuna serferaziya dinya û axretê, evroke di nav destêt me da ya hatiye êxsîrkirin; mirî hisabe!!!

Ji ya wan şêx û mela ve qedirgirtina Qur'anê hema ew e; ku wê di kaloxkêt xemilandî û nexişandî da li serê malê bilind hilawîsîn û li demê êk tînît biber ve rabin hema hinde ye!

Ya rast eve ye; hurmet û qedir girtina ji hemyan mezintir bo Qur'ana kerîm eve ye; ku mirov her wê bo xwe bikene 'ala û dûrîşme û di hemî kar û barêt jîn û jiyara xwe da li ser xwe tetbîq biken; ka wê çî gotiye guhê xwe bideynê û bi viyan pê 'emel biken, divêt, bi can û dil xwe têwer biken; Wê çî helal û çî heram kiriye, divêt, li wan tixûba di hişyar bîn, qet her ji çu lave bê-emriya hukum û ehkamêt Wê ne ête kirin.

Ya fer û pêtivî ye 'alim û zanayêt me, wan xeletîya; ewêt ku hinde sal û zemane di derheqa Qur'ana kerîm da hatîne kirin rast biken û ya durust bo miletê xwe bêjin.

Xudê Te'ala dibêjît:

وَقَالَ الرَّسُولُ يَا رَبِّ إِنَّ قَوْمِي اتَّخَذُوا هَٰذَا الْقُرْآنَ مَهْجُورًا

"Pêxemberî digot û dê li roja qiyametê jî bêjît: (Ey Rebbê min! Bê şik qewmê min (anku ummeta min) ev Qur'ane ya terk kirî û pişta xwe ya dayê û pê 'emel naken !!!)."[41]

41 Sûreta Furqan 03

Ellahu Te‘ala dibêjît:

وَمَا اَرْسَلْنَا مِنْ رَسُولٍ اِلاَّ بِلِسَانِ قَوْمِهِ لِيُبَيِّنَ لَهُمْ

“(Ey Muhemmed baş bizane!) Heçî pêxemberê Me berî te bo miletekî hinartî, îleh Me ew pêxember bi ezmanê wan (anku hema Me, êk ji wan bi xwe yê hilbijartî û bo wa) yê kirye pêxember; da ku ew (rêka dînê Ellahu Te‘ala bo wan bi ezmanê) wan rohn û aşkira biket û bêjît.”[42]

Ya aşkira ye nê me hemyan ji berekî ve, nexasime ‘alim û zanayêt me, me gele texsîrî û teng sistî ya kirî di derheqa vê Qur’ana Pîroz da! Û em gelek yêt paş ve mayin; me bi ezmanê xwe anku bi ezmanî vî miletê xwe yê Busulman xizmeteka baş; ku layiqî wan bît bo vê Qur’ana kerîm û hedîsêt Pêxemberî; ewêt ku seneda wan ya rast û durust nekirye û nakeyîn jî nuza bo çî …!!!

Rast e, Pêxember û sihabiyêt wî vê gavê ne di heyatê da ne, belê li şûna wî û pêş wî û sihabiyêt wî ve divêt, ‘alim û zanayêt her miletekî, nexasima ‘alim û zanayêt miletê me naverok û mesaja vê Qur’ana kerîm bo miletê xwe bêjin û rohn û aşkira biken bi ezmanekî zelal, divêt, ew bibne tercûman di navbeyna Xudayê jorî û ‘ebdêt Wî da; ew gotina Wî bigehîne wan û bo rohn û aşkira biken, gelo ma şerefa ji vê hindê mezintir heye bo wan, heke ku ew bi vî wezîfê xwe yê rebbanî rabin û bicih bînin.

Heçî kesekê di mejyê xwe da, di çavêt xwe da û di ‘emrê xwe da yî bê‘uzur bît û wî îmkan û rêkek jî hebît, ku ew bişêt pê me‘na wê Qur’anê ya ku ew dixûnit bizanît û pê têbgehît, divêt, qet ew texsîrî û tembeliyê neket; dizanîn û fehim kirana me‘na Qur’anê da, nê heke

42 Sûreta Îbrahîm 4

çu ‘uzrêt wî nebin; hema ew ji bêbextî pişta xwe bide te Qur’anê, ew xwe tê negehînît û fehim neket, qet ew çu xêrê ji wê xwandina xwe nabînît, ew Qur’an dê bîte bela serê wî li dinya û axretê.

Belê, bo wî kesî yê ku çu îmkan û rê nebin ku ew pê me‘na wê Qur’anê ya ku ew dixûnit bizanît û pê têbgehît, hema ew bi wê Qur’ana dixûnît; ya ku ew me‘na wê nuzanît jî dibîte xudan xêr û bo wî bi wê xwandina wesa jî xêr tête nivîsîn û heta yê ku Qur’an jî ne xwandibît, heke hema ew bi viyan û ji dil berê xwe bidete berperêt Qur’ana kerîm bo wî jî xêr tête nivîsîn.

Belê, ewêt dibêjnê; mela û seyda di nav vî miletê me da, ferz û pêtivî ye li ser wan ku ew bi rast î û durustî vê Qur’anê bixûnin, baş û law me‘na wê bizanin û têbgehin û fehim biken û her pê ‘emel biken, her dîsa divêt, ew rast û durust û me‘na wî jî nişa xelk û ‘alemê jî biden, çunku ew yê li şûna Pêxemberî û ew nimûnene bo xelk û ‘alemê û ummetê.

Belê, heke ewêt dibêjinê; seyda û mela wan me‘na wê Qur’anê ya ku ew dixûnin nezanin, tênegehin û xwe ne ‘elimandê û pê ‘emel nekir, wellahî heram e bêjne ewêt wesa seyda yan jî mela, ew ne melane belane û ew Qur’ana ew dixûnin jî dê bîte bela serê wan, li dinya û axretê, ew dê pê rûreş û şermizar bin; çunkî ew xaînîn li gel Qur’anê û ew xwe tênegehin û bo ummetê jî nabêjin.

Miletê me yê bidevê xwe girtî hema heçi kesê elîfbêtkek jî xwandibît ew dibêjnê mela yan seyda!

Haşa teşbîh nebît, li nav Fila heta xwandevayêt wan yêt dînî; anku şemaşe û qeşe baş û law me‘na ‘incîlê nezanin û tê negehin û fehm neken ew ji dev xwe nabêjinê Qeşe,

ye'nî ew hiştî me hema ji dev xwe wî navî nabêjine wan û wê rûtbê na dene wan, ev e ku dînê wan yî betal e jî.

Nê heke em di me'na vê Qur'anê negehîn û fehim nekeyn, ma gelo çewa em dê şêyîn wê bo xwe keyne rêbaz, pêşeng û hekem! Erê, ma çewa em dê şêyîn pê 'emel bikeyn û bo êkûdu bêjîn?

Ferz û wacib e li ser me hemyan, em her xwe anegora vê Qur'ana kerîm rast û durust bikeyn û ji hemî lave kar û barêt jîn û jiyara xwe li ber ronahiya wê rast û durust bikeyn; da ku ya rast bît Busulmanetiya me.

Nê di eserêkê da ya hatî, dibêjît ew kesê Qur'ana kerîm dixûnît heke ew me'na wê nezanît, tênegehît û fehm neket, metela wî her wekî metela wî kesî ye, ew ê ku hinde hingivînê zer û zelal di şûşeyeka dergirtî û qepatkirî da dibînît, û ew rabît ezmanê xwe di rex û doranêt wê şûşê bidet û bialisît, erê, gelo ma qet çu tama wî hingivînî û şirînahiya wî dê çîte devê wî kesî! Nexêr, 'eynen metela wî kesî jî ew ê ku Qur'anê dixûnît û me'na wê nezanît, tênegehît û fehm neket, bi timamî wekî metela wî kesiye yê ku me gotî. Nê faydê xwandina Qur'anê ya mezin ew e ku mirov me'na wê bizanît û fehim biket da ku di heyata xwe da pê 'emel biket.

Bê şik heçî qewm û miletê guhê xwe nedete Qur'ana kerîm yan jî pişta xwe bidetê û pê 'emel neken û bo xwe nekene hekem di navbeyna xwe da; îleh Ellahu Te'ala di dinya û axretê da dê wan berdete êk, dê wan rezîl û şermizar ket, dê wan kete 'îbret bo hemî xelk û 'alemê, her wekî wan qewmêt berê; ewêt ku Qur'ana kerîm bo me behsê wan diket; ewêt ku guhê xwe nedaye pêxemberêt xwe û bi wî tiştî 'emel nekirî; ew ê ku Xudayê jorî bi rêka wan pêxemberan bo wan hinartî.

Her wekî em hemî baş dizanîn her cîhazekî elektronik, nexasima evêt nûdem; wekî bilgiseyar, telefiziyon û telefona Îlleh herekê katalokek ye'nî kitêbkeka bûçûk demê tu dikirî ya li gel hey, di wê katalokê da ya nivisî heke tu anegora vê katalokê vî cîhazî bo xwe bideye şolî û pê 'emel bikey, ew zû xirab nabît û tu dê xêrê jêbînî.

Nê keteloka me însanan û mirovan jî; ku bedena me dinyaye ke di dinyayê da; ev cîhazê hinde yî mezin û hinde yî bi selabet, ev Qur'ana kerîme, anku heke em mirov anegora Qur'ana kerîm dirêjiyê bidene jîn û jiyara xwe, em dê di dinya û axretê da xêrê ji xwe bînin û serferaz bîn.

Bê şik hîvî û daxwaza her Busulmanekî jî her eve ye; ku ew vê Qur'ana kerîm jirêve rast û dururst bixûnît û bi ezmanê xwe me'na wê bizanît û têbigehît û paşê bo xelk û 'alemê bêjît.

Nê heke em di Qur'anê negehîn û me'na wê ne zanîn, ma çewa em dê emir û nehyêt Xudayê xwe bi cih înîn? Welhasil, divêt, em hemî rabîne ser xwe hindî ku bişên bi jin û mêr ve vê Qur'anê rast û durust bixûnîn û baş û law me'na wê bi fehmkirin bizanîn û bo êkûdu bêjîn û ji dil pê 'emel bikeyîn û herdîsa divêt, em baş qedrê 'alim û zanayêt xwe; ewêt Xudayî û Rebbanî jî bigrîn, guhê xwe bideyne gotinêt wan, her du'a bo wan bikeyn; ew ji çî qewm û miletî bin û li kîrê bin, di sax bin yan jî wa wefat kirbît, çunku em bi xêra wan yê bi ser rêka heq hilbîn.

Herdîsa divêt, ehlê îmanê; anku îmandar pişta xwe nedene êkûdu; divêt, qedrê êkûdu bigrin û ji dil bi viyaneka mezin hej êkûdu biken û her pişt û palbin bo êkûdu; madî û me'newî desteku harîkar bin bo êkûdu ji hemî lave, divêt, ew kêmasî û qusûrêt êkûdu 'efû biken û bi me'rîfet bo êkûdu rast û durust biken û li tîrekê û

hergav hemî pêkve palêt heqiyê, çêkirnê û qenciyê bin, jixwe, qudetî û xwe ragirtin û tekebur qet çû caran ne layiqî îmandara ye, divêt, ehlê îmanê her êk birayê xwe yê îmandar di ser xwe ra bigrît; da ku cahêl û nezan ji ‘îlm û zanîna wan, ji tifaq, exlaq û terbiya wan şermê biken û bo xwe ders û ‘îbreta ji wan bigrin.

Nê belav kirna dînî ne bes bi ezman û qelemî bitinê ye; ehlê îmanê; anku îmandar dişên bi hemî kar û barêt xwe û bi hemî rabîn û rûniştinêt xwe, bi hemî hal û hereketêt xwe Tewhîdê, îmanê û dînî bo xelk û ‘alemê bêjin û li ber wan şirîn biken, çunku yê îmandar ne tevşûkê berokê xwe bitinê ye.

Merem û meqseda her îmandarekî ya mezin eve ye; ku hemî Busulman pêk ve, hemî kar û barêt jîn û jiyara xwe bi vê Qur’anê ve girê biden û her wê bo xwe û di navbeyna xwe da bikene hekem û pê ‘emel bikeyin, da ku ev dinya me bi nûrha Qur’anê bo me hemyan bi êmnahî û tenahiyê bixemilît û da ku li axretê jî em pê serferaz û rûspî biçine huzûra Xudayê Jorî û Pêxemberê Wî, divêt, vê çendê jî qet em çû caran ji bîr nekeyin; wellahî ev Qur’ane li roja qiyametê li huzûra Xudayê Jorî yan dê şehdekyê li ser me dedet; şikayetê li me ket (Xudê neket) yan jî li wê rojê dê bo me bîte şahid (inşaellah) em dê pê ser bilind û serferaz bîn.

Xudê Te‘ala dibêjît:

أَمْ تَحْسَبُ أَنَّ أَكْثَرَهُمْ يَسْمَعُونَ أَوْ يَعْقِلُونَ إِنْ هُمْ إِلاَّ كَالأَنْعَامِ بَلْ هُمْ أَضَلُّ سَبِيلا

“(Ey Muhemmed) yan jî, ma tu we hizir dikey ku bahra pitir ji wan haj wan ayeta heye ewêt ku tu bo wan dibêjî yan jî ew aqilê xwe didene şolî û tê digehin? Belê, ew hema

her wekî pêreh û heywana ne, bê şik ewêt ku ji hemyan pitir ji rêka heq didûr û şaştir hema her ew bi xwe ne."[43]

Xudê Te'ala dibêjît:

أُوْلَئِكَ الَّذِينَ طَبَعَ اللَّهُ عَلَى قُلُوبِهِمْ وَسَمْعِهِمْ وَأَبْصَارِهِمْ وَأُولَئِكَ هُمُ الْغَافِلُونَ

"Eha hema her ew in; ewêt ku Ellahu Te'ala dilêt wan, guhêt wan û çavêt wan muhr kirîn, eha her ew in; ewêt ku ji îmanê dixafil û bêageh."[44]

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنَّ شَرَّ الدَّوَابِّ عِندَ اللَّهِ الصُّمُّ الْبُكْمُ الَّذِينَ لاَ يَعْقِلُونَ

"Bê şik li nik Ellahu Te'ala xudanruh (anku mirovêt) ji hemyan xirabtir hema her ew in; ewêt ku dikerr û lal; anku ewêt ku aqilê xwe na dene şolî û tênagehin."[45]

Xudê Te'ala dibêjît:

كِتَابٌ أَنزَلْنَاهُ إِلَيْكَ مُبَارَكٌ لِّيَدَّبَّرُوا آيَاتِهِ وَلِيَتَذَكَّرَ أُولُو الْأَلْبَابِ

"(Ey Muhemmed!) Ev Qur'ane gelek ya bixêr û bereket, Me bo te ya hinartiye xwarê da ku mirov hizrêt xwe di ayetêt wê da biken û da yêt xudan hiş û bîr aqilê xwe bidene şolî û bo xwe şîreta jê bigrin."[46]

43 Sûreta Furqan 44
44 Sûreta Nehl 108
45 Sûreta Enfal 22
46 Sûreta Sad 29

Xudê Te'ala dibêjît:

أَفَلَا يَتَدَبَّرُونَ الْقُرْآنَ أَمْ عَلَىٰ قُلُوبٍ أَقْفَالُهَا

"Erê ma bo çî ew bi fehim û têgehiştin hizrêt xwe di vê Qur'anê da naken? Yan jî ma dilêt wan dikilîl kirîne?"[47]

Vêca fer e em, zanîn û fehmê jêk cuda bikeyn,rast e hindek yêt heyîn hindîbêjî dizanane û gelek jî ya xwandî belê, fehim nekiriye û tênegehiştîne, lewma evroke di nav jîn û jiyara wan da çu reng û rûbarêt Busulmanetiyê; anku çu bîr û baweriya Ehlê- Sunnet û cima'etê; 'eqîda Selefêt salih nîne, heta li demê xêrxwazek rabît bo wan 'eqîda Selefêt salih bêjît, ew jê direvin û qet wî qebûlnaken û heta ew sed îftîra û bêbextiya li wan diken!

Xudê Te'ala dibêjît:

فَفَهَّمْنَاهَا سُلَيْمَانَ ۚ وَكُلًّا آتَيْنَا حُكْمًا وَعِلْمًا

"Paşê Me, bi Sileymanî da fehmkirin û Me ew têgehand (anku hukmê wê meselê Me nîşa wî da). Belê, Me hîkmet û zanîneka binecih dabû wan her duka jî (anku babê û kurî; Dawud û Sileymanî (silavê Xûdê li ser wan her duka bin)."[48]

Rast e; cahêlî bi xwandina repûrût bitinê li dev mirovî xilas nabît; fehim û têgehiştîn lazime û zêde barî wê hindê jî; bê hesûdî wijdan jî lazime.

Xudê Te'ala dibêjît:

يَعْلَمُونَ ظَاهِرًا مِّنَ الْحَيَاةِ الدُّنْيَا وَهُمْ عَنِ الْآخِرَةِ هُمْ غَافِلُونَ

47 Sûreta Muhemmed 24
48 Sûreta Elebiya 79

“Ew hema ji jîn û jiyara dinyayê wî tiştê serve serve û pêşçav bitinê dizanin, belê wan haj jîn û jiyara axretê (îman û baweriyê) nîne û ew çu jê nuzanin û ew ji wê hindê di xafilin!” [49]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَأَعْرِضْ عَن مَّن تَوَلَّى عَن ذِكْرِنَا وَلَمْ يُرِدْ إِلَّا الْحَيَاةَ الدُّنْيَا

“(Ey Muhemmed!) Vêca tu rûyê xwe ji wan bade; ewêt ku pişta xwe daye Qur’ana me; ewêt hema jîn û jiyara dinyayê bitinê dixwazin û daxwaz diken.” [50]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَجَعَلْنَاهُمْ أَئِمَّةً يَدْعُونَ إِلى النَّارِ وَيَوْمَ الْقِيَامَةِ لا يُنصَرُونَ

“Me, ew di dinyayê da yêt kirîn e pêşeng û rêberêt kafiryê û kufrê; ew gazî Xelk û alemê diken bo agirî, li roja qiyametê jî qet çu harîkarî bo wan nîne û naête kirin.” [51]

Ev ayeta jêrî behsê Bel‘amê kurê Ba‘urayî diket, ku ew ‘alimek bû ji alimêt Benî îsraîliya li serdemê Musa Pêxemberî - selam li ser bin- ew ji xelkê Yemenê bû, wi bo rêka heq bi ‘îlmê xwe ‘emel nekir; ew heta qiyametê bû nimûnek bo wan ‘alim û zana ewêt ku dibine tabi‘êt zalim û zordara û xwe difiroşin.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَاتْلُ عَلَيْهِمْ نَبَأَ الَّذِي آتَيْنَاهُ آيَاتِنَا فَانسَلَخَ مِنْهَا فَأَتْبَعَهُ الشَّيْطَانُ فَكَانَ مِنَ الْغَاوِينَ وَلَوْ شِئْنَا لَرَفَعْنَاهُ بِهَا وَلَكِنَّهُ أَخْلَدَ إِلَى ٱلأَرْضِ وَٱتَّبَعَ

49 Sûreta Rom 7
50 Sûreta Necm 29
51 Sûreta Qeses 41

هَوَاهُ فَمَثَلُهُ كَمَثَلِ ٱلْكَلْبِ إِن تَحْمِلْ عَلَيْهِ يَلْهَثْ أَوْ تَتْرُكْهُ يَلْهَث ذَّٰلِكَ مَثَلُ ٱلْقَوْمِ ٱلَّذِينَ كَذَّبُواْ بِآيَاتِنَا فَٱقْصُصِ ٱلْقَصَصَ لَعَلَّهُمْ يَتَفَكَّرُونَ

"(Ey Muhemmed!) Tu serhatiya wî, ew ê ku Me, ayetêt xwe dayînê û paşê wî xwe ji nav kêşayî û avêtî bo ummeta xwe bixûne û bêje, vêca demê şeytan bi dûv wî ketî û paşê ew bû ji mirovêt xirhayî û kafir bû. Nê heke Me hezkirba Em da wî bi wan ayeta, ewêt ku Me, dayînê bilind ragirîn, belê wî xwe berda 'erdî û ew bi dûv hewa û hewesê xwe ket. Vêca metela wî her wekî metela seyî ye; heke tu lê biheytînî û derbêxî ew dê hilkehilkê ket û ezmanê xwe derêxît û heke hema tu wî bihêlî û lê ne heytînî jî her dîsa ew dê hilkehilkê ket û dê ezmanê xwe derêxît. Eha ev e, metela wî miletî ye; yê ku ayetêt Me direw hisab kirîn û hisab diken. Vêca (Ey Muhemmed!) Tu hema her van serhatiyêt rast bo wan bêje û bîne bîra wan; da ku ew hizrêt xwe biken û bo xwe 'îbreta jê bigrin."[52]

Xudê Te'ala dibêjît:

مَثَلُ الَّذِينَ حُمِّلُوا التَّوْرَاةَ ثُمَّ لَمْ يَحْمِلُوهَا كَمَثَلِ الْحِمَارِ يَحْمِلُ أَسْفَارًا ۚ

"Metela wan Cûhya; ewêt ku Tewrat li ser hatiye ferz kirin ku ew pê 'emel biken û paşê wan pê 'emel nekirî, wekî metela wî kerî ye; ew ê ku barekî kitêba li ser piştê."[53]

Pêxemberî -selat û selam li ser bin-yê gotî: (Ez gelek ji zerera 'Alimêt bîd'etçî, hukumdarêt xirabkar û dîndarêt cahêl ditirsim, li demê ku ew di nav ummeta min da peyda dibin).[54]

52 Sûreta E'raf 175
53 Sûreta Cum'ê 5
54 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya Sehîh e

Îmamê ‘Elî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Nê heqî bi zelama naête niyasin; (anku bi reng û rûbarêt wan bi şaş û lifêt wa) belê heqî hosa tête zanîn û aşkira dibît; jirê ve ku tu heqiyê baş bizanî, paşê serê xwe rakey û berê xwe bideyê, tu dê zanî ewêt li ser rêka heq ka ew kîne).[55]

Sufyanê kurê ‘Uyeynete (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Ew ‘Alim û zanayêt me yêt xirab dibin; (Ewêt ku dibine tabi‘êt zalima û zordara), wan yê daye bi Cuhya ve (ew şubhî Cuhya ne; Cuhî dixirhayî bin wan xelk û ‘alem jî dixirandin), ew dîndarêt me yêt xirab û xelet dibin, wan jî yê daye bi Fila ve; şubhî Fila ne; (Fila bi şaşî û xeletî her ‘îbadet bo Xudê Te‘ala dikir û yê diken jî).[56]

Geleka ji Selefêt salih (Xudê ji wan hemyan razî bît) yê gotî: (Hûn gelek li xwe dihişyar bin ji fitna ‘Alimêt facir; (Ewêt bîd‘etçî û tabi‘êt zodara) û ji fitne û xirabiya dîndarêt cahêl û nezan, nê bi fitne û xirabiyêt wan xelk û ‘alem xirab dibin û ji dînî dixirhin).[57]

Şeyxulîslam Îbin Teymiyê Herranî (Xudê jê razî bît) dibêjit: (Weyîl bo wî ‘Alimî bît yê ku xwe bêdeng diket; dînî bo cahêl û nezanan nebêjît, her dîsa Weyil bo wî cahêl û nezanî jî bît yê ku guhê xwe nedete gotina ‘alima û pê neket.[58]

Li demê ‘alim û zana xwe bêdeng kir; rêka Xudê Te‘ala anku şerî‘etê dînê Îslamê beyan û aşkira nekir bo xelk û ‘alemê û negot; hîngê xelk û ‘alem jî dê xelet tê gehin; ew dê we hizir ken ku xwe bêdeng kirin, ya baş û çêtir e, xelk û ‘alem dê tembel bin; dê pişta xwe dene dînî û dê paş guhê xwe ve avên!

55 ‘Eqîdetul-Muwehîdîn
56 Ji Kitêba bedaî‘ul-Fewaîd
57 Mecmu’a Şeyxulîslam Ibin Teymiye yê Heranî
58 El-mustedrik

Divêt, her Busulmanek hindî zanîna xwe; hêl û şiyanêt xwe xizmetê bo dînê xwe biket; bêjît, belav biket û berevaniyê jê biket heta mirnê.

‘Ebdullahê kurê Mes‘ud (Xudê jê razî bît) dibêjît:

(Li nik peydabîna her bîd‘eyeka ku pê xirabî û zerer bigehîte dînê Îslamê îleh weliyek ji weliyêt Xudê Te‘ala li wêrê yî hazire; da ku ew berevaniyê ji dînê Îslamê biket; ew bo xelk û ‘alemê xirabî û zerera wê bîd‘ê dibêjît û aşkira diket.

Vêca hûn bo xwe, hazirbîna li van meydan û cihêt hosa xenîmet bizanin (bo harîkariya dînî û red kirna bîd‘a). Hûn ne tirsin bila her pişta hewe bi Xudê Te‘ala ya qaîm û germ bît).[59]

Îmam Ehmedê kurê Henbel (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Heke te xwe bêdeng kir û min xwe bêdeng kir, pa vêca kengê yê cahêl û nezan dê tiştê rast î û xelet jêk cuda ket û zanît!).[60]

Nê çî demê ehlê heqiyê xwe li ser kirna tiştê batil bêdeng kir, hîngê ewêt wî tiştê batil diken ew dê we hizir ken ku ew di heqin. Babê Zerî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Dostê min anku pêxemberî -selat û selam li ser bin- bi hinde xesletêt xêr û qenciyê şîret ya li min kirî; wî şîret ya li min kirî ku di rêka belavkirin û gotina dînê Xudê Te‘ala da ez ji lomehiya çu lomekaran netirsim, û her dîsa wî şîret ya li min kirî ku ez gotina heqiyê bêjim çenda ya tehil bît jî; ne bidilê hindeka bît jî).[61]

Îmamê Xezalî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Şer û zerera ‘Alimêt bîd‘etçî; (Ewêt ku bi navê dînî hinde tişta çêdiken)

59 Bedai‘ut-Tefasîr ya Îbn el-Qeyîm
60 Şerha ‘îlelêt Timzî ya îbn Receb
61 Sehîha Îbn Hebanî

û hukhmdarêt xirabkar li ser ummetê, ji şer û zerera şeytanî gelek mezintir û xirabtire; çûnku şeytan bi wasîta wan hêdî hêdî dînî ji nav dilê xelk û ‘alemê radikêşît û tînîte der).[62]

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Heçî kesê ‘ilim û zanîneka dînî bizanît û paşê ew veşêrît; bo kesekê ne bêjît, ji ber wê hindê Xudê Te‘ala li roja qiyametê dê lixavekî ji lixavêt agirê Cehennemê dete ser devê wî).[63]

Şeddadê kurê Ewsî (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Ez hema bes ji şer û xirabiyêt ‘Alimêt bîd‘etçî; (Ewêt ku bi navê dînî hinde tiştan çêdiken) û hukumdarêt xirabkar ditirsim li ser ummetê, û li demê herb û şer kete di nav ummeta min ya îcabê da (anku di nav Busulmana da) hêdî li ser naête rakirin heta roja qiyametê).[64]

Zerê babê Zerî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Carekê ez li gel Pêxemberî -selat û selam li ser bin- birêve diçûm, min guhlê bû wî sêcara got: (Ez ji şerê Decalî li ser ummeta xwe pitir ji şerê tiştekî dî ditirsim, min gotê ya qasidê Xudê! Ew çî tişte, ew ê ku tu ji şerê Decalî pitir jê ditirsî li ser ummeta xwe? Îna wî got: Ez pitir ji şerê ‘Alimêt bîd‘etçî; (Ewêt ku bi navê dînî hinde tiştan çêdiken) û hukumdarêt xirabkar ditirsim, li demê ku ew di nav ummeta min da peyda dibin).[65]

Babê Umametê (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî:

62 Îhya ‘Ulumud-Dîn
63 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya Sehîh e
64 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya Sehîh e
65 Îmam Ehmedê kurê Henbel

Tirs û sehmek dê bi ser ummeta min da êt, Xelk û ‘alem dê bi xar qesta ‘alimêt xwe ken, ew ho berê xwe didenê ku ew ‘alimêt wan Xudê Te‘ala yêt mesxekirîn; anku yêt kirîne meymûnk û xinzîr.[66]

Zanayê mezin ibnul- Qeyyîm (Xudê jê razî bît) di kitêba xwe da ewa ku bi navê: (Îxasetul-Lehfan min mesaîd eş-Şeytan) da dibêjît: Hindîke mesxebîniye li ser şikil û sureta meymûnk û beraza îleh dê çêbît di nav du taîfa da ji vê ummetê: Di nav ‘alimêt xirab kar da; ewêt ku direwa li Xudê Te‘ala û Pêxemberê Wî diken; ewêt ku dînê Xudê Te‘ala û şerî‘etê Wî diguhorin bi kirna bîd‘a. Xudê Te‘ala dê wan mesxeket; dê şikil û suretê wan guhorît, dê wan kete meymûnk û beraz. Her wekî ku çewa ew dînê Wî diguhorin. Û Xudê Te‘ala dê wan jî mesxeket; dê şikil û suretê wan guhorît; dê wan kete meymûnk û beraz, ewêt ku bi aşkirahî bi fisq û ficura xwe û kirna tiştêt heram hetka dînê Xudê Te‘ala diben. Ew ê ku Xudê Te‘ala ji wan di vê dinyayê da mesxe neket; şikil û suretê wî ne guhorît, nekete meymûnk û beraz, Xudê Te‘ala di qebrî da yan li roja qiyametê dê wan mesxeket; dê şikil û suretê wan guhorît; dê wan hîngê kete meymûnk û beraz.

Geleka ji ‘Alim û zanayêt mezin yê gotî: ‘Alim û zanayêt dînî sê qismin:

1-‘Alimê rêka miletê Îbrahîm Pêxemberî

(silavêt Xudê li ser bin),

2- ‘Alimê dewletê,

3-‘Alimê ummetê:

66 Kitêba Newadirul-Usul, yaHekîmê Tirmizî, ‘Umdetul-Qarî û Kenzul-‘Umal

* ‘Alimê rêka miletê Îbrahîm Pêxemberî (silavêt Xudê li ser bin) ew, ew ‘Alime yê ku jibilî Qur’an û sunnetê bi kesekê dî ve ne yî girêdayî, ew ew e; yê ku bi delîlêt aşkira anku bi Qur’an û hedîsêt durust, bêtirs heqiyê; rêka dînê Îslamê her dibêjît û belav diket. Xudê Te‘ala behsê wan diket û dibêjît:

وَيَخْشَوْنَهُ وَلَا يَخْشَوْنَ أَحَدًا إِلَّا اللَّهَ

“Ew hema her ji dil ji Ellahu Te‘ala bitinê ditirsin û ew ji Ellahu Te‘ala pêvetir qet ji kesekî dî natirsin.”[67]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَا يَخَافُونَ لَوْمَةَ لَآئِمٍ

“Qet ew (ye‘nî ew îmandarêt dînî dibêjin) natirsin ji lomehiya çu lomekaran.”[68]

* ‘Alimê dewletê (yê şêxa, axa û zengîna); ew; ew e yê ku berê xwe didetê, ka çewa dewlet dê ji wî ya razî bît û ka dewletê çî ji wî divêt, ew hema wekî dewletê dibêjît, çî wekî Qur’an û sunnetê bît yan jî ne, qet li guhê wî nîne, çunku ew dûvelanke; ji ber tirsa wî mi‘aşê yê ku ew ji dewletê werdigirît heqiyê nabêjît!

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَاتْلُ عَلَيْهِمْ نَبَأَ الَّذِي آتَيْنَاهُ آيَاتِنَا فَانسَلَخَ مِنْهَا فَأَتْبَعَهُ الشَّيْطَانُ فَكَانَ مِنَ الْغَاوِينَ

“(Ey Muhemmed!) Tu serhatiya wî, ew ê ku Me, ayetêt xwe dayînê û paşê wî xwe ji nav kêşayî û avêtî bo ummeta

67 Sûreta Ehzab 39
68 Sûreta Maîde 54

xwe bixûne û bêje, vêca demê şeytan bi dûv wî ketî û paşê ew bû ji mirovêt xirhayî û kafir bû.”[69]

* ‘Alimê ummetê jî ew e; yê ku berê xwe didetê ka çewa mirov dê ji wî dirazî bin, ew hema wesa; bi navê dînî bid‘e û çîroka bo xelk û ‘alemê dibêjît; dilê kesekê ji xwe nahêlît, çunku ew ehlê parî ye, wî qet haj dînî nîne!

Va bîd‘etçiya heqîqetêt Îslamê li ber xelk û ‘alemê yêt aloz û berze kirîn.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَئِنِ اتَّبَعْتَ أَهْوَاءَهُم بَعْدَ الَّذِي جَاءَكَ مِنَ الْعِلْمِ ۙ مَا لَكَ مِنَ اللَّهِ مِن وَلِيٍّ وَلَا وَلَا نَصِيرٍ

“Belê bi sûnd, nê heke piştî ku ‘îlm û zanîn (Qur’an) bo te hatî, tu bi dûv hewa û hewesê wan bikevî, wê gavê bo te li hemberî Ellahu Te‘ala qet çu piştevan û harîkar nabin ku te ji ‘ezaba Wî xilas biken.”[70]

Ew bi sanahî êkûdu dixapînin; tu dê bînî li demê îmandarekî xêrxwaz heqîqeteka Îslamê (ayeteka Qur’anê yan jî hedîsek bo wa) got; hema her wê gavê, ew dibêjin: Ev ayet û hedîsêt he yêt Selefiya; Wehhabiya ne, ji ya wan cahêl û nezanan ve jî Selefî û Wehhabî ne didurust in; haşa ew wan xirhayî hisab diken! Gelo ma cahêl û nezanî heta kîrê! Heta hindek ji wan cahêlêt nezani şikayeta wan îmandaran li dev hinde zalim û dujminêt dînî jî diken; bi gelek new‘êt îftîra û bêbextiya.

Xudê Te‘ala dibêjît:

كَذَٰلِكَ مَا أَتَى الَّذِينَ مِن قَبْلِهِم مِّن رَّسُولٍ إِلَّا قَالُوا سَاحِرٌ أَوْ مَجْنُونٌ

69 Sûreta E‘raf 175
70 Sûreta Beqere 120

أَتَوَاصَوْا بِهِ ۚ بَلْ هُمْ قَوْمٌ طَاغُونَ

“Eha her hosa ewêt berî wan jî çend pêxemberek bo wan hatiba, îleh wan digot: “Eve sêhirbaze, yan jî yî dîn e. Erê, ma wan bi vê hindê wesyet li êkûdu kirye? Nexêr, hema ew qewmekî gelek ji hedê xwe diderketî ne.”[71]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا حَسْرَةً عَلَى الْعِبَادِ ۚ مَا يَأْتِيهِم مِّن رَّسُولٍ إِلَّا كَانُوا بِهِ يَسْتَهْزِئُونَ

“Wey li halê ‘ebda! Heçî pêxemberê bo wan hatî, îleh wan yarî û tirane bo xwe yê bi wana kirîn.”[72]

Sebebê vî halî û cahêliyê eve ye; çûnku di medresêt welatê me yêt kevin da û heta di yêt nihe jî da qet çu behsê ‘eqîda Ehlê- Sunnet û cima‘etê anku ‘eqîda Selefêt salih ne hatiye kirin û naête kirin jî; nê ev medrese hemî hej berê da bi wan şêx û terîqeta ve digirêdayî ne Ewêt; ku peyrew û tabi‘êt Eş‘eriyêt kelamcî ne! Qet kesek neşêt vê rastiyê veşêrît yan jî înkar biket.

Bêyî ku ev şêx û melayêt he şerm û heya biken ew dibêjin: Bo ‘Eqîdê em pêyrew û tabi‘êt îmamê Eş‘erî ne; îmamê Ebû’l Hesenê-Eş‘erî (Xudê jê razî bît)18 kitêb yêt heyîn, ev e bo nimûne, hema ev her sê kitêbêt wî yêt ku behsê ‘Eqîdê; îman û baweriyê diken besin:

(رسالة إلى أهل الثغر)

1- Risale ila ehli’ s-Sexer

(مقالات الإسلاميين)

71 Sûreta Zariyat 53
72 Sûreta Yasîn 30

2-Meqalat-ul-Îslamiyyin

(الإبانة عن أصول الديانة)

3- “El-Îbane ‘en usuli’d-diyane

Xwe êk ji van her sê kitêbêt wî li dev wan nîne û heta wan ne dîtîne jî!

Herdîsa ew dibêjin: Em di meselêt fîqhî jî da pêyrew û tabi‘êt îmamê Şafi‘î ne (Xudê jê razî bît), ew jî direw e.

Îmamê Şafi‘î 15 kitêbêt wî yêt fîqhî yêt heyîn, ev e bo nimûne; hema ev her du kitêbêt wî: el-Umm û Rîsale besin:

( كتاب الأم وكتاب الرسالة )

Çenda ku kitêba wî el-Umm behsê babetêt fiqhiye û kitêba wî el-Rîsale behsê usulul-Fîqhiye, ew di va her du kitêbêt xwe da li gelek ciha behsê ‘Eqîda û bîr û baweriya Selefêt salih jî diket. Vêca fer e em va her du kitêbêt wî bixûnîn, baş têbigehîn û fehim bikeyn û bo êkudu jî bêjîn.

Îmamê Şafi‘î (Xudê jê razî bît) wî hindî deyka xwe yê hej vê kitêba xwe kirî, lewma wî navê wê yê kiriye deyk (Umm) yan  jî ev kitêba wî maka hemî gotinêt wî ye, anku hemî gotinêt wî; mezhebê wî yê cedîd ser ji vê kitêba wî ye.

Belê xwe êk ji van kitêbêt îmamê Şafi‘î (Xudê jê razî bît) li dev wan nîne û tu nabînî! Dê heke rast e hûn hej îmamê Şafi‘î diken; panê ‘eqîda îmamê Şafi‘î ‘eynen ‘eqîda Selefêt salih bi xwe ye, dê werin ‘Eqîda wî qebûl biken û bibne pêyrew û tabi‘êt wî, heke rast e hûn

Şafi‘î ne! Nê demê îmamê Şafi‘î li ‘Êraqê neqil nav digotinê: Nasîru-Sunne.

Belê hûn bêdelîl yêt mayne bidûv qîl û qalêt wan kesa ve ewêt ku dibêjin: Em şafi‘î ne! Nê divêt, em her talibêt heqiyê bîn û gotina heq qebûl bikeyn, xwe bila kî jî bêjît.

Îmamê ‘Elî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Berê xwe nede wî kesî yê ku taxivît, belê hûn hema berê xwe bidene axivtin û gotina wî ka ya bidelîle an ne).[73]

Şêx Muhemmedê kurê ‘Ebdulwehhabî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Ya aşkira ye hema her talibê heqiyê, heqiyê qebûl diket).

Şêx Muhemmed ‘Enqerî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Yê heqiyê qebûl neket, Xudê Te‘ala dê wî mubtelaket bi qebûlkirna batilî.

Rast e vê gavê gelek qursêt Qur’anê, imamxetîb, medrese û îlahîyat li nav welatê me yêt heyin û yêt hatîne vekirin, belê hema ew hinde navin; çunkî gelek kêm me‘na Qur’ana kerîm di wan da tête xwandin û gotîn û jixwe ‘eqîda Selefêt salih qet di nav wan da naête xwandin û heta behsê wê jî naête kirin!

Nê ev e hûn bi xwe jî yê dibînin; ku ka çewa hindek ji îlahiyetçiya yê ji dînî dûr ketîn û di çewa ne û yêt çilê hatîn; gelek ji wan yêt bîne mulhid; bela û dujminêt dînê Îslamê û Busulmana!

---

73 Ji kitêba Mîrqat el-Mefatîh ‘Elî el-Qarî

## ME‘ÎŞET, KAR Û ‘EMEL

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا النَّاسُ اعْبُدُوا رَبَّكُمُ الَّذِي خَلَقَكُمْ وَالَّذِينَ مِنْ قَبْلِكُمْ لَعَلَّكُمْ تَتَّقُونَ الَّذِي جَعَلَ لَكُمُ الْأَرْضَ فِرَاشًا وَالسَّمَاءَ بِنَاءً وَأَنْزَلَ مِنَ السَّمَاءِ مَاءً فَأَخْرَجَ بِهِ مِنَ الثَّمَرَاتِ رِزْقًا لَكُمْ فَلَا تَجْعَلُوا لِلَّهِ أَنْدَادًا وَأَنْتُمْ تَعْلَمُونَ

“Ey gelî mirovan! Hûn hema her û ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo wî Rebbê xwe yê bitinê biken, Ew ê ku hûn hemî xuliqandîn û dayn û ewêt berî hewe jî, da ku hûn bi vê hîndê xwe biparêzin ji bê-emriya Ellahu Te‘ala. Her Ellahu Te‘ala ye, yê ku ‘erd bo hewe xweş kirî; raêxistî û Wî ‘esman jî bo hewe yê kirye avahî (û ban). Ew ew e yê; ku bo hewe ji ‘ewra avê tînîte xwarê, Ew bi wê avê fêqî û zerzewata şîn diket û rizqî bo hewe jê didet, vêca hûn çu şirîk û hevkûfan bo Ellahu Te‘ala çêneken, nê hûn bi xwe jî dizanin (Ellahu Te‘ala êkî bitinê ye).”[74]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَكَأَيِّن مِّن دَابَّةٍ لَّا تَحْمِلُ رِزْقَهَا اللَّهُ يَرْزُقُهَا وَإِيَّاكُمْ ۚ وَهُوَ السَّمِيعُ الْعَلِيمُ

“(Ey gelî mirovan! Hûn bizanin) Hîndî giyanewerêt heyîn, qet ew bi xwe hiştî hewe neşên rizqî bo xwe li gel xwe hilgirin (û bo paşe roja xwe komken û dane serêk). Hema her Ellahu Te‘ala bitinê rizqê wan hemyan didet û yê hewe jî. Ellahu Te‘ala haj hemî deng û pêjiniya heye û Ew hemî tiştan bi timamî dizanît.”[75]

74 Sûreta Beqere 21-22
75 Sûreta ‘Enkebut 60

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَجَعَلْنَا لَكُمْ فِيهَا مَعَٰيِشَ وَمَن لَّسْتُمْ لَهُۥ بِرَٰزِقِينَ

“Me, hemî sebeb û egerêt jîn û jiyarê bo hewe li ser rûyê ‘erdî yêt mûheya kirîn, zêde barî bo wan xudanruha jî; ewêt ku rizqê wan ne di destê hewe da.”[76]

Nê her wekî em hemî baş dizanîn dînê Îslamê ka çewa ‘eqîde; bîr û bawerî ye, ‘eynen her wesa rêbaza jîn û jiyarê ye jî, bo mirovan, nexasima bo îmandaran, çunku dinya û axret hevkûfêt êkin; pêk ve digirêdayî ne; êk bêy ya dî nabît, ne durust e mirov êkê bigrît ya dê berdet; wê gavê mirov di ji her duka mehrum bît.

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَلْيَعْبُدُوا رَبَّ هَذَا الْبَيْتِ الَّذِي أَطْعَمَهُمْ مِنْ جُوعٍ وَآمَنَهُمْ مِنْ خَوْفٍ

“Vêca bila ew her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo xudanê vê malê (anku Ke‘ba birûmet) biken, Ew ew xudê ye, Ew ê ku ew ji birsatiyê têr kirîn û ji tirsê jî êmin kirîn.”[77]

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- piştî ku muhacir binecih bîn li Medîna Munewwere, wî Selmanê Farisî û Ebu Derda (Xudê ji wan her duka razî bît) kirbine

birayêt êk. Vêca carekê Selmanê Farisî (Xudê jê razî bît) radibît diçîte seredana birayê xwe, Ebu Derdayî (Xudê jê razî bît), berê xwe didetê ku ew gelek di mû‘uz û diverêlhayî ne. Selmanê Farisî (Xudê jê razî bît) gote Ebu Derday: Bê şik Xudayê te heq yê li ser te hey, nefsate heq yê li ser te hey û ehlê mala te jî heq yê li ser te hey, vêca divêt, tu herekê ji van heqê wan bideyê û bicih bînî. Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin-pêdiheshît

76 Sûreta Hicir 10
77 Sûreta Qureyş4 -3

ku Selmanê Farisî (Xudê jê razî bît) yê ho gotiye birayê xwe anku Ebu Derday (Xudê jê razî bît), Pêxemberî got: We ye; Selman rast dibêjît).[78]

Hemî pêxemberan -'Eleyhîmu's-selat û wes-selam- di dirêjiya jîn û jiyara xwe da, bo me'îşetê xwe û ehlê mala xwe li gel bi cih înana wezîfê pêxemberiniya xwe herek ji wan bi sin'etekî; şol û karekî ve yî mijûl bû.

Heta Pêxemberê me -selat û selam li ser bin- dibêjît: (Kesekê çu te'am û xwarin ji wî te'amî yî baştir û xweştir ne xwarî ye, yê ku ji keda destêt wî bi xwe bît; Nê Pêxemberê Xudê Te'ala Dawud-'Eleyhî's-selam- her ji keda destêt xwe dixwar).[79]

Pêxemberî -selat û selam li ser bin- gelek cara tîna bîra sihabiyêt xwe (Xudê ji wan hemyan razî bît) û digote wan; hindî Pêxemberêt berahîka min wan hemyan bi destêt xwe yê şol kirî û ew li ser vê hindê jî dibêjît: (Hindî Pêxemberêt Xudê Te'ala hinartîn, -selat û selam li ser wan hemyan bin- wan hemyan şivanî ya kirî), îna sihabiya gotê: Ey qasidê Xudê erê, ma te jî şivanî kirî ye? Wî cewaba wan da û got: (Belê, min jî mudehekî li wî cihî yê ku dibêjinê Qerarît bo Qureyşiya şivanî ya kirî).[80]

Eve heta Xudê Te'ala dibêjîte Pêxemberê xwe Muhemmedî-selat û selam li ser bin- ma Me tu bi Xedîcayê (Xudê jê razî bît) û bi malê wî nekiriye xudan 'eyal, mal û mezel:

وَوَجَدَكَ عَائِلًا فَأَغْنَىٰ

"Erê ma tu ne yî feqîr bî, nê Ellahu Te'ala, tu yê zengîn nekirî?".[81]

78 Buxarî
79 Buxarî
80 Buxarî
81 Sûreta Duha 8

Sihabiyêt pêxemberî (Xudê ji wan hemyan razî bît) zêde barî wê cîhad û xebata wan hemyan li gel Pêxemberî -selat û selam li ser bin- dikir, li gel wê hindê jî, wan hemyan bi şev û roj bo me'îşetê xwe û 'erzû 'eyalê xwe jî bêrawistan herekê şol û kedek dikir.

Heta geleka ji 'alimêt Îslamê yêt kevin jî, bo me'îşetê xwe û jîn û jiyara 'erzû 'eyalê xwe/ zar û zeçê xwe, wan jî li gel bi cihînana wezîfê xwe; dersgotin û teblîxa dînî, sin'et û karek dikir, da ku ew muhtacî kesekê nebin.

Vêca jiber vê hindê fer û pêtivî ye her îmandarekî şol û karek hebît; da ku ew di jîn û jiyara xwe da berminet û muhtacî kesekê nebît, çunku dînê Îslamê dînê xebat, kesb; kar û şolî ye, dînê Îslamê qet hej betalî û

tembeliyê naket. Îmamê 'Umer (Xudê jê razî bît) dibêjît: Hinde cara ez bidîtina bejin û bala zelamekî keyf xweş dibim, belê li demê min pirsyara wî ji hindeka dikir, wan gotiba min: Ew yî bêşol û 'emele; yî betal e, zelamîniya wî kesî ji çavê min diket).[82]

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberî-selat û selam li ser bin-yê gotî: (Xudê Te'ala pitir hej îmandarê biquwet û xweristî diket; çûnku ew ji îmandarê lawaz û ze'îf gelek bi xêrtir û baştir e).[83]

Pêxemberî -selat û selam li ser bin- her di du'ayêt xwe da digot: (Ey Xudayê min! Ez hîvî û rica ji Te dikem, ku tu min sitare û muhafize bikey; ji kafiriyê û feqîriyê).[84]

82 Ji Dîwanul 'Ereb
83 Muslim
84 Ev hedîs e ya Hesene

Ebu Zerê Xeffarî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Li demê feqîrî diçîte cihekî; nav welatekî, kafirî dibêjîtê: (Raweste tu min jî li gel xwe bibe wê rê).[85]

Hukema dibêjin: (Feqirî serê hemî bela û musîbeta ye).

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Ey xudayê min! Ez hîvî û rica ji Te dikem, ku tu min sitare û muhafize bikey ji birsatiyê, nê birsatî pîstirîn heval e; nexasima bi şevê; ew nahêlît mirov serê xwe danît; tena û rihet binvît).[86]

Îmamê ‘Umer (Xudê jê razî bît) ev e berî 1430’h sala ye, wî ev gotina xwe ya navdar ya gotî: (Nê heke feqirî zelamek ba ye, ez da wî kujim).[87]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَا تَنْسَ نَصِيبَكَ مِنَ الدُّنْيَا

“Belê tu bahra xwe ji jîn û jiyara dinyayê jî, ji bîr neke.”[88]

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- dibêjît:

(Heke êkî qet çu guneh nebin, hema bese bo wî ev guneh e; ku heke ew texsîriyê di berhevkirna rizqê ‘eyalê xwe da biket; ye‘nî yî bêşol bît û betal rûnit)”.[89]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَسَخَّرَ لَكُمْ مَا فِي السَّمَاوَاتِ وَمَا فِي الأَرْضِ جَمِيعًا مِنْهُ إِنَّ فِي ذَلِكَ لآيَاتٍ لِقَوْمٍ يَتَفَكَّرُونَ

85 Etekafulul-îctîma‘i fî dewî eş-şerî‘e
86 Zanayê mezin Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya Hesen e
87 Mecelet el-Feysel hejmara 258
88 Sûreta Qeses 77
89 Muslim

“Hindî tiştêt di ‘esmana da û di ‘erdîda heyn ew hemî bi carekê Ellahu Te‘ala ji kerema xwe bo hewe yêt misexer kirîn, bê şik di van tiştan da gelek nîşan û ‘elamet yêt heyn (li ser heyîn û mezinahiya qudreta Ellahu Te‘ala), bo wan kesa; ewêt ku aqilê xwe didene şolî û fehmdiken.”[90]

Xudê Te‘ala dibêjît:

هُوَ الَّذِي خَلَقَ لَكُمْ مَا فِي الأَرْضِ جَمِيعًا

“Her Ellahu Te‘ala ye, yê ku hindî tiştêt di ‘erdîda heyn, Wî ew hemî bi timamî bo xizmeta hewe yêt xuliqandîn û amade kirîn.”[91]

Xudê Te‘ala dibêjît:

هُوَ الَّذِي جَعَلَ لَكُمُ الْأَرْضَ ذَلُولاً فَامْشُوا فِي مَنَاكِبِهَا وَكُلُوا مِنْ رِزْقِهِ وَإِلَيْهِ النُّشُور

“Her Ellahu Te‘ala ye, yê ku ji kerema xwe ‘erd bo hewe xweş û berfireh kirî, vêca hûn bo xwe li ser rûyê ‘erdî bigerhin û ji wî rizqî yê ku Wi daye hewe bi xwen û vexwen. Belê, zivirîna hewe hemyan her bal Wî bitinê ve ye.”[92]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَإِذَا قُضِيَتِ الصَّلَاةُ فَانْتَشِرُوا فِي الْأَرْضِ وَابْتَغُوا مِنْ فَضْلِ اللَّهِ وَاذْكُرُوا اللَّهَ كَثِيراً لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَ

“Paşê demê nivêja roja eyniyê hate kirin û hûn jê xilas bin, hûn rabin li ser rûyê ‘erdî belav bibin, hûn ji dan û

90 Sûreta Casiye 13
91 Sûreta Beqere 29
92 Sûreta Mulk 15

kerema Ellahu Te‘ala bo xwe daxwaza rizqî; bi ked û kesba xwe biken (anku herne ser şol û karêt xwe)."[93]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا النَّاسُ اذْكُرُوا نِعْمَتَ اللَّهِ عَلَيْكُمْ هَلْ مِنْ خَالِقٍ غَيْرُ اللَّهِ يَرْزُقُكُم مِّنَ السَّمَاء وَالأَرْضِ لا إِلَهَ إِلاَّ هُوَ فَأَنَّى تُؤْفَكُونَ

"Ey gelî mirovan! Hûn hema her wê nî‘metê ya ku Ellahu Te‘ala daye hewe bîne bîra xwe. Erê, ma ji bilî Ellahu Te‘ala çu xaliqêt dî hene ku bişên ji ‘esmanî û ‘erdî rizqî bo hewe biden? Haşa, qet ji Wî pêvetir çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin. Vêca pa çewa hûn ji ser rêka dînê Ellahu Te‘ala têne zivirandin?!"[94]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ مَنْ حَرَّمَ زِينَةَ اللَّهِ الَّتِي أَخْرَجَ لِعِبَادِهِ وَالطَّيِّبَاتِ مِنَ الرِّزْقِ قُلْ هِيَ لِلَّذِينَ آمَنُوا فِي الحَيَاةِ الدُّنْيَا خَالِصَةً يَوْمَ القِيَامَةِ

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje: "Erê ma kê xemil; cilkêt cuwan û taze; (xemil û zînet) û xwarnêt helal û xweş, ewêt ku Ellahu Te‘ala bo ‘ebdêt xwe derêxistîn û dayn heram kirîne (anku ma hedê kê ye û kî dişêt wan li ser wan heram biket)?" Tu bêje: "Ev e bo wan ne, ewêt ku di jîn û jiyara dinya yê da îman û bawerî înandî û her dîsa li roja qiyametê; li axretê jî, ev e xweser hema her bo wan bitinê ne."[95]

Fer û pêtivî ye li ser her îmandarekî ku ew di kar û baret pêtivî; yêt jîn û jiyara dinya xwe da, gelekî şareza û hosta bît, çunku ne dinya bêy axret dibît û ne axret jî bêy dinya dibît, her du hevkûfêt êkin.

93 Sûreta Cum‘ê 10
94 Sûreta Fatir 3
95 Sûreta E‘raf 32

Îmamê ‘Umerê kurê Xetabî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Qet bila kesek ji hewe ne rûnît; texsîriyê di berhevkirna rizqê xwe û ‘eyalê xwe da neket û bila ew li gel wê betalî û tembeliya xwe jî ne bêjît: Ey Xudayê min! Tu ji kerema xwe rizqê me bide, nê wî yê zanî ku Xudê Te‘ala bu kesekê zêr û zîva ji ‘esmana nabarînît).[96]

Îmamê Elî (Xudê jê razî bît) yê gotî: (Tu we bo dinya xwe yî hosta be; şol bike her wekî ku tu dê ebedî di dinyayê da mîniye sax û qet namirî; ‘eynen her wesa tu bo axreta xwe jî we yî zanabe û xebatê bike her wekî ku tu dê subehî mirî); anku tu we û hêj pitir jî li kar û barêt dînê xwe; li îmana xwe yî hişyar be; bi şev û roj heta mirinê.

Vêca kar û xebat bo dinya yê ew e; ku mirov xwe şaş neket; rizqê xwe û yê ‘erzû û ‘eyalê xwe bi rêka ked û kesba paqij û helal daxwaz û berhev biket.

Belê divêt, li gel wê hindê jî û hêj pitir mirov bo axreta xwe jî yî zana û hişyar bît, divêt, em bi vê dinyayê axreta xwe avabikeyn; bi kirna kar û ‘emelêt baş, riza Xudê Te‘ala bi dest xwe ve bînîn û bi destûr û anehiya Wî xwe musteheqî Biheşta Wî bikeyn.

Vêca bizav û xebat mezin bo axretê eve ye; ku mirov heta mirnê xwe rast û durust, qaîm ragirît li ser rêka dînê Îslamê; anku li ser rêka şirî‘etî; emr û fermanêt Xudê Te‘ala bi cih bînît; li dûv rêberiya qasidê Wî Muhemmedî -selat û selam li ser bin-.

96 Ji exbarêt ‘Umerî Tentawî

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَاللَّهُ يَعْلَمُ مَا تُسِرُّونَ وَمَا تُعْلِنُونَ

“Ellahu Te‘ala wî tiştî yê hûn vedşêrin û wî tiştî jî yê ku hûn bi aşkirahî diken, Ew wan tiştan hemyan bi timamî dizanît.”[97]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَقُلِ اعْمَلُوا فَسَيَرَى اللَّهُ عَمَلَكُمْ وَرَسُولُهُ وَالْمُؤْمِنُونَ ۖ وَسَتُرَدُّونَ إِلَىٰ عَالِمِ الْغَيْبِ وَالشَّهَادَةِ فَيُنَبِّئُكُم بِمَا كُنتُمْ تَعْمَلُونَ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje hemî ‘ebdêt min yêt qenc û xirab: “Hewe çî bivêt; çî kar û ‘emelêt hewe bivên di dinyayê da hûn biken, Ellahu Te‘ala dê wan kar û ‘emelêt hewe bînît û Pêxemberê Wî û îmandar jî dê bînin. Belê, paşê hûn hemî dê êne zivirandin bal Wî ve, yê ku xeybê; anku hemî tiştêt nepenî û aşkira dizanît, vêca Ew, dê wan tiştan hemyan bo hewe bêjît ewêt ku hewe kirîn.”[98]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَأَن لَّيْسَ لِلْإِنسَانِ إِلَّا مَا سَعَىٰ

“Hema bes bedela wan kar û ‘emela bitinê dê gehîte mirovî û mirov dê bînît; ewêt ku mirovî bi xwe kirîn (çî xêr yan jî guneh bin).”[99]

Dibêjin Îmamê Elî (Xudê jê razî bît) yê gotî, Xudê Te‘ala dibîjît: Ey gelî ‘ebda Ez kefîlê rizqê hewe me, belê

97 19 Sûreta Nehl
Sûreta Tewbe 105
98 Sûreta Necim 29
99 Sûreta Necim 39

Ez ne kefîlê îman û baweriya hewe me; îmana hewe bi xîret û xebata hewe ve ya girê da ye.

Belê divêt, vê hindê jî çû caran jibîr nekeyn; ew kesê pîşta xwe bidete dînî; paş guhê xwe ve pavêt û xwe hajê neket, Ellahu Te'ala dê wî bi qetlaziya rizqî û me'îşetê edeb det, ew di jîn û jiyara xwe da, her dê yî şepilî û aloz bît, qet ew xêrê ji xwe nabînît û hindî ku ew ked û kesba jî biket dê di bêbereket bin û ew her dê yî rût û dest valabît; di vê dinya yê da êka wî nabîte du û jixwe li axretê jî ew dê rûreş û şermizar çîte huzûra Ellahu Te'ala.

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمَن يَتَّقِ اللَّهَ يَجْعَل لَّهُ مَخْرَجًا وَيَرْزُقْهُ مِنْ حَيْثُ لَا يَحْتَسِبُ وَمَن يَتَوَكَّلْ عَلَى اللَّهِ فَهُوَ حَسْبُهُ إِنَّ اللَّهَ بَالِغُ أَمْرِهِ قَدْ جَعَلَ اللَّهُ لِكُلِّ شَيْءٍ قَدْرًا

"Heçî kesê ji Ellahu Te'ala bitirsît; (bê-emriya Wî neket) Ellahu Te'ala dê bo wî rêkeka bi xêr û bêr veket;

û dê ji rexekî we ve rizqê wî det û zêde ket ku qet wî hizra wê derê nedikir. Heçî kesê pişta xwe bi Ellahu Te'ala qayim û germ biket, Ellahu Te'ala besî wî ye. Bê şik Ellahu Te'ala, her dê emrê xwe bi cih înît. Bi sûnd, Ellahu Te'ala bo her tiştekî mîqdar û qedareka aşkira ya danadî û ya diyar kirî."[100]

Xudê Te'ala dibêjît:

مَنْ عَمِلَ صَالِحًا مِّن ذَكَرٍ أَوْ أُنثَىٰ وَهُوَ مُؤْمِنٌ فَلَنُحْيِيَنَّهُ حَيَاةً طَيِّبَةً ۖ وَلَنَجْزِيَنَّهُمْ أَجْرَهُم بِأَحْسَنِ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ

Heçî kesê kar û 'emelekî baş biket ji zelam û jinka; belê, ew diîmandar bin, bê şik Em dê wî/wê di vê dinyayê

100 Sûreta Telaq 2-3

da êxîne nav jîn û jiyareka xweş. Bi sûnd, Em dê li axretê jî xelatekî gelekî law û baştir ji wan kar û ‘emela; ewêt ku ew diken deyne wa.[101]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَنْ أَعْرَضَ عَنْ ذِكْرِي فَإِنَّ لَهُ مَعِيشَةً ضَنْكًا وَنَحْشُرُهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ أَعْمَى قَالَ رَبِّ لِمَ حَشَرْتَنِي أَعْمَى وَقَدْ كُنْتُ بَصِيرًا قَالَ كَذَلِكَ أَتَتْكَ آيَاتُنَا فَنَسِيتَهَا وَكَذَلِكَ الْيَوْمَ تُنْسَى

“Belê heçî kesê pişta xwe bidete Qur’ana Min û pê ‘emel neket, bê şik bo wî di dinyayê da jîn û jiyareka bi meşeqet û qetlazî dê hebît û li roja qiyametê jî Em, dê wî hutim û kore înîne meydana heşrê.” Hîngê ew dê bêjît: “Ey Rebbê min! Te bo çî ez hosa hutim û kore înandîme meydana heşrê? Bê şik nê ez di dinyayê da yî bi çav bim!” Ellahu Te‘ala dêbêjîte wî: “Rast e ev e Me, tu kore înandiye meydana heşrê; çûnkî ayetêt Me bo te dihatin, te pişta xwe didayê û ji bîra xwe dibirin, vêca tu jî evroke wesa dê êye ji bîrkirin (û dê mîniye di nav agirî da).”[102]

101 Sûreta Nel 97
102 Sûreta Ta ha 124-126

# GAZÎYA DÎNÊ ÎSLAMÊ

Xudê Te'ala dibêjît:

فَفِرُّوا إِلَى اللَّهِ إِنِّي لَكُم مِّنْهُ نَذِيرٌ مُّبِينٌ

"(Ey gelî mirovan!) Vêca hûn hema her birevine bi nik Ellahu Te'ala ve. Bê şik ez ji layê Wî ve bo hewe hemyan hişyarker û tirstêderekî aşkira me."[103]

Xudê Te'ala dibêjît:

يَا قَوْمَنَا أَجِيبُوا دَاعِيَ اللَّهِ وَآمِنُوا بِهِ يَغْفِرْ لَكُم مِّن ذُنُوبِكُمْ وَيُجِرْكُم مِّنْ عَذَابٍ أَلِيمٍ

"Ey gelî qewmê me! Hûn cewaba wî biden yê ku gazî hewe diket bo rêka dînê Ellahu Te'ala û îman û baweriyê pê bînin, Ellahu Te'ala dê bo hewe hindeka ji gunehêt hewe 'efû ket û dê hewe ji 'ezaba biêş û jan parêzît û xilas ket."[104]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمَنْ أَحْسَنُ قَوْلًا مِّمَّنْ دَعَا إِلَى اللَّهِ وَعَمِلَ صَالِحًا وَقَالَ إِنَّنِي مِنَ الْمُسْلِمِينَ

"Ma axiftina kê ji ya wî kesî lawtir û çêtir e yê ku gazî xelk û 'alemê diket bo rêka dînê Ellahu Te'ala û ew bi xwe jî kar û 'emelêt baş biket û bêjît: Bê şik ez ji Busulmana me?"[105]

---

103 Sûreta Zariyat 50
104 Sûreta Ehqaf 31
105 Sûreta Fussîlet 33

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَادْعُ إِلَىٰ رَبِّكَ ۖ إِنَّكَ لَعَلَىٰ هُدًى مُّسْتَقِيمٍ

“Tu hema her gazî xelk û ‘alemê bike da ku ew bêne ser rêka dînê Rebbê te. Bê şik tu yê li ser rêbaz û rêka şerî‘etekî heq û rast.”[106]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا اتَّقُوا اللَّهَ حَقَّ تُقَاتِهِ وَلَا تَمُوتُنَّ إِلَّا وَأَنتُم مُّسْلِمُونَ

“Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Hûn ji Ellahu Te‘ala bitirsin; belê, bi tirsaneka we; ku hejî mezinahiya Wî bît û hûn Musluman bimrin (anku li ser rêka dînê Îslamê).”[107]

Xudê Te‘ala dibêjît:

اتَّبِعُوا مَا أُنزِلَ إِلَيْكُم مِّن رَّبِّكُمْ وَلَا تَتَّبِعُوا مِن دُونِهِ أَوْلِيَاءَ ۗ قَلِيلًا مَّا تَذَكَّرُونَ

“Ey gelî mirovan!) Hûn hema her li dûv wê Qur’ana kerîm herin; pê ‘emel biken; ewa ku ji layê Rebbê hewe ve bo hewe hatiye xwarê, newebît hûn ji bilî Ellahu Te‘ala bi dûv çu dost û rêberêt dî nekevin. Belê, hûn kêm guhê xwe didene we‘z û şîreta û kêm ‘îbreta bo xwe digirin!”[108]

Xudê Te‘ala dibêjît:

اسْتَجِيبُوا لِرَبِّكُم مِّن قَبْلِ أَن يَأْتِيَ يَوْمٌ لَّا مَرَدَّ لَهُ مِنَ اللَّهِ ۚ مَا لَكُم مِّن مَّلْجَإٍ يَوْمَئِذٍ وَمَا لَكُم مِّن نَّكِيرٍ

106 Sûreta Hec 67
107 Sûreta Alî‘îmran 102
108 Sûreta E‘raf 3

“(Ey gelî kafiran!) Hûn cewaba Rebbê xwe biden (emrê Wî bi cih bînin: Busulman bin) berî hatina wê roja bêvegerhan; ewa ku bi emrê Ellahu Te‘ala têt (anku roja qiyametê). Wê rojê, bo hewe çu hişar û sitargeh nabin ku hûn xwe tê da veşêrin û qet hûn neşên înkara gunehêt xwe jî biken!”[109]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا اسْتَجِيبُوا لِلَّهِ وَلِلرَّسُولِ إِذَا دَعَاكُمْ لِمَا يُحْيِيكُمْ

“Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Hûn her guhê xwe bidene Ellahu Te‘ala; emrê Wî bicih bînin û bi xeberiya Pêxemberê Wî jî biken; demê ku wî gazî hewe kir bo wê rêka heq; ewa ku heke hûn pê ‘emel biken, hûn dê jîn bi jîn û jiyareka gelek xweş û ser feraz di dinya û axretê da.”[110]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا أَطِيعُوا اللَّهَ وَأَطِيعُوا الرَّسُولَ وَلَا تُبْطِلُوا أَعْمَالَكُمْ

“Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Hûn her bi gotina Ellahu Te‘ala; Qur’ana kerîm ‘emel biken û bi hedîsêt Pêxemberî; ewêt rast û durust jî ‘emel biken, newebît hûn kar û ‘emelêt xwe pûç û betal neken.”[111]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا آتَاكُمُ الرَّسُولُ فَخُذُوهُ وَمَا نَهَاكُمْ عَنْهُ فَانْتَهُوا وَاتَّقُوا اللَّهَ إِنَّ اللَّهَ شَدِيدُ الْعِقَابِ

109 Sûreta Şura 47
110 Sûreta Enfal 24
111 Sûreta Muhammed 33

“Heçî tiştê Pêxember didete hewe hûn wergirin û heçî tiştê ew nehya hewe jî jê diket hûn xwe jê bidene paş. Hûn ji Ellahu Te‘ala bitirsin; (bê-emriya Wî neken). Bê şik cezayê Ellahu Te‘ala gelekî zor û dijwar e.”[112]

Xudê Te‘ala dibêjît:

ومَثَلُ الَّذِينَ كَفَرُوا كَمَثَلِ الَّذِي يَنْعِقُ بِما لا يَسْمَعُ إلّا دُعاءً ونِداءً صُمٌّ بُكْمٌ عُمْيٌ فَهم لا يَعْقِلُونَ

“Metela ewêt kafir bûn her wekî metela wan heywana ye; ewêt ku hema guh li gazî û qêrya (şivanî bitinê) dibît. Ew muşrîk dikerin; wan haj heqiyê nabît û dilalin; heqiyê nabêjin û di kore ne; ji dîtina rêka heq, ji ber hindê çu bi nav aqilê wan da naçît û qet ew di çu nagehin.”[113]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَقَالُوا لَوْ كُنَّا نَسْمَعُ أَوْ نَعْقِلُ مَا كُنَّا فِي أَصْحَابِ السَّعِيرِ

“Wan got: “Nê heke me guhê xwe daba Qur’anê; (me aqilê xwe daba şolî), yan jî em baş têgehiştibayîne, qet evroke em nedibîne ji xelkê agirê Cehnemê!”[114]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَقَالُوا رَبَّنَا إِنَّا أَطَعْنَا سَادَتَنَا وَكُبَرَاءَنَا فَأَضَلُّونَا السَّبِيلا

“Ew dê bêjin :Ey Rebbê me! Me bi gotina serok û mezinêt xwe yêt xirabkar kir û me guhê xwe da wan, wan em diser rê da birîn û xirandin!”[115]

112 Sûreta Heşir 7
113 Sûreta Beqere 171
114 Sûreta Mulk 10
115 Sûreta Ehzab 67

Pêxemberî Xudê -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Dîn şîret û nesîhete; anku divêt, Busulman hemî her şîret û nesîheta li êkûdu biken).[116]

Divêt, yê Busulman jirê ve baş dînê xwe bi zanît û fehim biket, paşê pê ‘emel biket û didûv ra bo xelk û ‘alemê bêjît; baş rohn û aşkira biket û paşê hindî zehmet û îzayêt sera dînî têne serê wî divêt, ew yî pê razî bît û xwe li ber bigrît.

Cerîrê kurê ‘Ebdullahê Becelî (Xudê jê razî bît) dibêjît:

(Ez çûme destê Pêxemberî-selat û selam li ser bin- min sozdayê; mubaye‘et li gel kir û gotî: (Ez soz û ‘ehdê dideme te ey qasidê Xudê! Ku ez nivêjêt xwe bi durustî bikem, bi timamî zikatê ji malê xwe bidem û çî Busulmanê ez bi rast bêm şîret û nesîheta lê bikem).[117]

Babê Se‘îdê Xudrî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Pêxemberî -selat û selam li ser bin-yê gotî: (Newebît! Gava zelamekî (anku êkî ji hewe) heqî zanî yan dît yan jî guhlê bû; bila ew ji tirsa xelk û ‘alemê da xwe bêdeng neket û divêt, ew wê heqiyê aşkira biket û neveşêrît).[118]

Selefêt salih (Xudê ji wan hemyan razî bît) wan bi gelek gotinêt xwe, hişyarî ya da ye ummetê ku ew xwe ji ehlê felsefê û kelamciya dûr bêxin û têkiliya wan neken.

Bi rast î ehlê felsefê û Kelamciya gelek Busulman yêt êxstîne di nav şik û gumanêt giran da û mejiyê wan yê hilhejandî.

Îmamê Ehmedê kurê Henbel (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Xudanêt kelamî anku kelamcî çû caran rûspî û ser feraz

116 Muslim
117 Muttefequn ‘eleyh
118 Tîrmizî û îbn Mace

nabin, heçî kesê tu bibînî ji wan; ewêt ku berê xwe didene ‘îlmê kelamê îleh fesadî û şûbhe ya di dilê wan da hey).[119]

Îmamê Şafi‘î (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Ez qirarê didem ku xudanêt kelamî anku kelamcî: Bi gopal û pêlava bêne edeb dan, û ew bo ‘îbret bi wî halî li nav ‘eşîra û qebila bêne gêran û bête gazîkirin bi dengê bilind: Nê eha ev e cizayê wan kesa ye; ewêt ku pişta xwe didene Qur’an û sunnetê û terkdiken, ewêt ku berê xwe didene ‘îlmê kelamî anku felsefa wan dixûnin).[120]

Muhemmedê kurê ‘Ebdullahê kurê ‘Ebdulhekemî

(Xudê jê razî bît) dibêjît min ji îmamê Şafi‘î (Rehma Xudê li ser bît) guhlê bû wî digot: Heke xelk û ‘alemê zanîba ka çend xirabû û nebaşî yêt ‘ilmê kelamîda heyn, ew da xwe jê dûr êxin û jê revin her wekî ku ew ji Şêrî direvin.[121]

Muzenî (Xudê jê razî bît) dibêjît min ji îmamê Şafi‘î (Rehma Xudê li ser bît) guhlê bû wî digot: Kelam bi xwe le‘netê li kelamciya diket.[122]

Îmamê Malikê kurê Enes (Xudê jê razî bît) dibêjît: Heke ‘îlmê kelamî ‘îlimba; da Sihabî û tabi‘î pê axivin her wekî ku ew bi ehkamît şirîêtî axiftîn û dîyarkirîn; belê, pa ‘îlmê kelamî batile û delaletê dikete ser batilî.[123]

Rebî‘ê kurê Sileymanî (Xudê jê razî bît) dibêjît min ji îmamê Şafi‘î (Rehma Xudê li ser bît) guhlê bû wî digot: Heke zelamek bi hemî guneha ji bilî şîrkê biçîte hizûra

119 Kitêba Camî’ul-‘Îlim
120 Fetih Rebb el-Beriye bîtelxîs el-Hemewî ye; Îbn el- ‘Useymîn
121 Deru’te‘ard Şeyxulîslam; Îbin Teymiyê Herranî
122 Muqrî bi rêka Suleymî ya wergirtî
123 Bexewî, Şerhusunne

Xudê Te‘ala bo wî çêtire; ku ew bi tiştekî ji ‘ilmê kelamî biçîte hizûra Wî.[124]

Îbn Bete (Xudê jê razî bît) di Îbana xwe da dibêjît, Îmamê Ehmedê kurê Henbel (Xudê jê razî bît) yê gotî: Li demê te dît zelamek yê hej Kelamciya diket, tu xwe bi hişyarî ji wî dûr bike.

Wacib e li ser hemî Busulmana; ku ew di derheqa sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala da terka îxtîlafê biken, hemî pêk ve bo têgehştina sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala xwe bi kelamê Xudê Te‘ala û sunneta pêxemberê Wî ve girê biden; li ser fehm û têgehiştina Selefêt salih (Xudê ji wan hemyan razî bît) teslîmî gotina Xudê Te‘ala û pêxemberê Wî bibin.

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَاأَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا لَا تُقَدِّمُوا بَيْنَ يَدَيِ اللَّهِ وَرَسُولِهِ وَاتَّقُوا اللَّهَ إِنَّ اللَّهَ سَمِيعٌ عَلِيمٌ

“Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Çû caran hûn bi ber Ellahu Te‘ala û Pêxemberê Wî nekevin (anku hûn her bi hukum û ehkamêt şerî‘etê dînê Îslamê ‘emel biken; hûn emrê kesekê di ser emrê Ellahu Te‘ala ra û yê Pêxemberê Wî ra negirin) û hûn ji Ellahu Te‘ala bitirsin; (bê-emriya Wî neken). Bê şik Ellahu Te‘ala, haj hemî deng û pêjiniya heye û Ew yî zana ye bi hemî tiştan.”[125]

Xudê Te‘ala nehya me ya kirî; ku em di mutabe‘eta Qur’ana kerîm û hedîsêt (rast û durust da) muxalefetê bikeyn ev e her wekî Xudê Te‘ala dibêjît:

124 Î‘tîqadu-Şafi‘î, Şeyxulîslam Ebû Hesen; ‘Eliyê kurê Ehmedê Hekarî
125 Sûreta Hucurat 1

وَمَن يُشَاقِقِ الرَّسُولَ مِن بَعْدِ مَا تَبَيَّنَ لَهُ الْهُدَىٰ وَيَتَّبِعْ غَيْرَ سَبِيلِ الْمُؤْمِنِينَ نُوَلِّهِ مَا تَوَلَّىٰ وَنُصْلِهِ جَهَنَّمَ ۖ وَسَاءَتْ مَصِيرًا

“Heçî kesê piştî ku rêka heq û rast bo aşkira bî, dujminatiyê li gel Pêxemberî biket û ji bilî rêka îmandaran bo xwe bi dûv rêkeka dî bikevît, nê heke ew bi dûv rêkeka dî ket, Em jî dê berê wî deyne wê rêka xelet; ewa ku wî berê xwe dayê û Em dê wî beyne Cehnemê û ew der cih û warekî gelekî xirab û kirêt e.”[126]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فاسْأَلُواْ أَهْلَ الذِّكْرِ إِن كُنتُمْ لاَ تَعْلَمُونَ

“Vêca heke hewe tiştek nezanî, hûn bo xwe di derheqa wî tiştî da pisyarê ji ehlê ‘îlmî; anku ‘alima û zana biken.”[127]

Hesenê Besrî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Heke ‘alim û zana nebane mirov da wekî heywan û behaîma lê ên).

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا اخْتَلَفْتُمْ فِيهِ مِن شَيْءٍ فَحُكْمُهُ إِلَى اللَّهِ ذَٰلِكُمُ اللَّهُ رَبِّي عَلَيْهِ تَوَكَّلْتُ وَإِلَيْهِ أُنِيبُ

“(Ey gelî mirovan!) Heçî tiştê hûn tê da bikevne îxtîlafê û li ser bimîne pêk ve, hukmê wî tiştî yê li nik Ellahu Te‘ala (anku hûn şerî‘etê xwe bibene nik Qur’anê û sunneta Pêxemberê Wî). Eha her ew Xudê Rebbê min e û pişta min bi Wî ya qayim û germ e û ez her dê vegerhime bal Wî bitinê ve.”[128]

126 Sûreta Nîsa 115
127 Sûreta Nehl 43
128 Sûreta Şura 10

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا أَطِيعُوا اللَّهَ وَأَطِيعُوا الرَّسُولَ وَأُولِي الْأَمْرِ مِنْكُمْ فَإِنْ تَنَازَعْتُمْ فِي شَيْءٍ فَرُدُّوهُ إِلَى اللَّهِ وَالرَّسُولِ إِنْ كُنْتُمْ تُؤْمِنُونَ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ ذَٰلِكَ خَيْرٌ وَأَحْسَنُ تَأْوِيلًا

“Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Hûn her bi gotina Ellahu Te‘ala; Qur’ana kerîm ‘emel biken û bi hedîsêt Pêxemberê Wî; yêt rast û durust jî ‘emel biken, heke bê-emriya Ellahu Te‘ala tê da nebît hûn bi gotina wan serok û rêberêt xwe jî biken; ewêt ku ji hewe; (anku di Busulman).

Vêca heke hewe di derheqa tiştekî da cirûbir kir û hûn mane pêk ve, hîngê hûn li ser wî tiştî (şerî‘etê xwe) bibene nik kitêba Ellahu Te‘ala; anku nik Qur’ana kerîm û hedîsêt Pêxemberê Wî; yêt rast û durust, heke rast e hewe îman û bawerî hebît bi Ellahu Te‘ala û roja qiyametê. Eha her ev e, bo hewe çêtir e û dûmahîka wê ya lawtir û baştir e.”[129]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَهَذَا كِتَابٌ أَنزَلْنَاهُ مُبَارَكٌ فَاتَّبِعُوهُ وَاتَّقُواْ لَعَلَّكُمْ تُرْحَمُونَ

“Ev Qur’ane kitêbeka gelek bixêr û berekete, Me ya hinartiye xwarê, vêca hûn hema her li dûv wê (Qur’anê) herin û pê ‘emel biken û hûn xwe biparêzîn ji bê-emriya Ellahu Te‘ala; da ku Ellahu Te‘ala rehmê bi hewe bibet.”[130]

129 Sûreta Nîsa 59
130 Sûreta En‘am 155

Xudê Te‘ala dibêjît:

هَذَا بَيَانٌ لِلنَّاسِ وَهُدًى وَمَوْعِظَةٌ لِلْمُتَّقِينَ

“Ev (Qur’ane) agehdarî û beyaneke bo hemî mirovan û rêka hîdayetê ye û şîreteke bo wan kesa; ewêt ku dimutteqî û dîndar.”[131]

Xudê Te‘ala dibêjît

وَجَاهِدْهُم بِهِ جِهَادًا كَبِيرً

“Tu ey Pêxember! Hema her bi vê Qur’anê (anku ka çewa Qur’anê gotiye, tu wesa) cîhad û mucadeleyeka gelek mezin li gel wan hemyan bike.”[132]

Îmamê kurê ‘Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) ew li ser vê hindê dibêjît; ye‘nî tu hema bi vê Qur’anê mucadelê li gel wan bike.

Xudê Te‘ala dibêjît:

الَّذِينَ جَعَلُوا الْقُرْآنَ عِضِينَ فَوَرَبِّكَ لَنَسْأَلَنَّهُمْ أَجْمَعِينَ عَمَّا كَانُوا يَعْمَلُونَ

“Vêca sûnd bi Rebbê te bît, Em dê pisyarê ji wan hemyan keyn di derheqa wî kar û ‘emelî da yê ku wan dikir; ku wan Qur’an cûn cûn jêk cuda dikir; hindek bawer dikir û hindek jî bawer nedikir.”[133]

131 Sûreta Alî ‘Îmran 138
132 Sûreta Furqan 52
133 Sûreta Alî ‘Îmran 7

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَأَمَّا الَّذِينَ فِي قُلُوبِهِمْ زَيْغٌ فَيَتَّبِعُونَ مَا تَشَابَهَ مِنْهُ ابْتِغَاءَ الْفِتْنَةِ وَابْتِغَاءَ تَأْوِيلِهِ ۗ وَمَا يَعْلَمُ تَأْوِيلَهُ إِلَّا اللَّهُ ۗ وَالرَّاسِخُونَ فِي الْعِلْمِ يَقُولُونَ آمَنَّا بِهِ كُلٌّ مِّنْ عِندِ رَبِّنَا ۗ وَمَا يَذَّكَّرُ إِلَّا أُولُو الْأَلْبَابِ

"Vêca ewêt şik û meyla xirab di dilê wan da hey, ew li dûv wan ayeta diçin, ewêt ku me‘na wan ya tarî û şitî êk; bo peydakirna kudîret û fitnê û da ku ew li dûv dilê xwe me‘na wan ayeta biguhorîn û çeqa jê biben. Nê me‘na wan ayeta ji Ellahu Te‘ala pêvetir qet kesekî dî nuzanît. Belê, ewêt destekî dirêj hey di ‘îlm û zanînê da, ew dibêjin: Me îman û bawerî ya pê înandî, ku ew hemî ji layê Rebbê me ve yêt hatîn. Hema her mirovêt aqildar; xudan hiş û bîr bitinê di vê hindê digehin û hizrêt xwe tê da diken."[134]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَأُمِرْتُ أَنْ أَكُونَ مِنَ الْمُسْلِمِينَ وَأَنْ أَتْلُوَ الْقُرْآنَ ۖ

"Emrê min yê hatiye kirin ku ez bibime ji Busulmana û (Herdîsa) Emrê min yê hatiye kirin ku ez hema Qur'anê bixûnim (çû çeqa jê nebem; bi te'wîl kirnêt xelet)."[135]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ يُلْحِدُونَ فِي آيَاتِنَا لَا يَخْفَوْنَ عَلَيْنَا

"Bê şik ewêt me‘na ayetêt Me diguhorin (û li dûv bayê dilê xwe ta jê diben), qet ew li ber Me diberze nînin û nabin."[136]

134 Muslim
135 Sûreta Neml 92
136 Sûreta Fussîlet 40

E'meş (Xudê jê razî bît) dibêjît: Me'na Yulhîdune eve ye; ku hindek, hinde nava bikene di nav navêt Ellahu Te'ala; ewêt ku ne ji navêt Wî.[137]

Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: (Heçî kesê ji hewe dît; ku êk yê tiştekî ne durust diket yan dibêjît, bila ew kes wê gavê wî tiştî bi destêt xwe raket û biguhorît, heke wî neşiya bi destêt xwe raket û biguhorît, bila ew bi ezmanê xwe wî tiştê raket û biguhorît, heke wî neşiya bi ezmanê xwe jî raket û biguhorît, bila hîngê ew bi dilê xwe nefretê jê biket û xwe jê dûr bêxît, belê, ev e ji îmana ze'îf û lawaz e."[138]

Vêca hindî tiştêt muxalifî Qur'an û sunneta Pêxemberî û rêka Selefêt salih bît; ew tişt hemî munker in û ne didurust in.

Divêt, tê bigehîn û fehim bikeyn ew sîfet û wesfêt Xudê Te'ala bi xwe di Qur'ana Pîroz da, bo xwe gotîn û aşkira kirîn yan jî ewêt ku Pêxemberê Wî bo me beyan kirîn, înkarkirna wan, guhorîna wan, te'wîl kirna wan, teşbîhkirna wan û betalkirna wan munker û xirab kariya ji hemî munker û xirab kariya mezintire?

Ev mes'ele anku înkarkirin, guhorîn, te'wîlkirin, teşbîhkirin û betalkirina sîfet û wesfêt Xudê Te'ala ne ji wan mes'ela ye; ewêt ku durust bît îxtîlaf û îctîhad tê da bête kirin, qet çu tiştê wesa nîne û nabît jî.

Fer û wacib e li ser hemî 'alim û zana ku ew hema her wekî sihabiya û Selefêt xwe yêt salih di sîfet û wesfêt Xudê Te'ala bigehin û fehim biken û her bo xelk û 'alemê jî rohn û aşkira biken û bêjin.

137 Ji kitêba Tewhîdê, ya Muhemmed bin Sileyman et-Temîmî
138 Muslim

Herdîsa fer û wacib e ku ‘alim û zana bi mêranî û bêtirs li hemberî wan kesa rabin; ewêt ku sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala bi aqilê xwe înkardiken, betaldiken diguhorin, te’wîldiken, teşbîh û temsîl diken xwe bila ew kes kî bîn jî, nê sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala hemî di ezelî û ebedî ne û ditewqîfîn e.

Îmamê Ebu Henîfe (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Xudê Te‘ala dest, wech û nefs yêt heyîn, ev e her wekî Xudê Te‘ala bi xwe di Qur’ana Pîroz da bo xwe yêt gotîn û aşkira kirîn, li demê Xudê Te‘ala bo xwe di Qur’ana Pîroz da behsê destî, wechî û nefsê diket, ew sîfet û wesfêt Wî ne, ne durust e êk bêjît: Me‘na destê Wî qudreta Wî ye yan jî nî‘metêt Wî ne; çûnku bi wê hindê sîfet û wesfêt Wî betal dibin, ew gotin yêt Qederî û Mu‘teziliya ne).[139]

Herdîsa Îmamê Ebu Henîfe (Xudê jê razî bît): dibêjît: (Kerbêt Xudê Te‘ala vedbin û razî jî dibît, vêca ne durust e ku êk bêjît: Kerb û xezeba Wî cizadan û ‘uqubeta Wî ye û razîbîna Wî jî xêr û mukafata Wî ye).[140]

Carekadî îmamê Ebu Henîfe (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Xudê Te‘ala sîfet û wesfêt zatî û fê‘lî yêt heyn, sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala yêt zatî wekî; Heyat, Qudret, ‘Îlim, Kelam, Sem‘, Beser Îradet. Sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala yêt Fê‘lî jî wekî; Xulqiyet kirin û dana rizqî, peyda kirna ji çûnehiyê û çêkirîna tiştan û ji bilî van jî, ji sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala yêt fê‘lî. Xudê Te‘ala bi nav û sîfetêt xwe ve yê heyî û dê her hebît; Ew bi nav û sîfetêt xwe ve yî ezelî û ebedî ye).[141]

139 Fîqhul-Ekber
140 Fîqhul-Ewset
141 El-Fîqhul-Ekber

Îmamê Şafi‘î (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Yê di şirî‘etî da gotineka bêdelîl bêjît; ev e wî ji dev xwe tiştek çêkir û kire şirî‘et û dîn bo xelk û ‘alemê.[142]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنْ يَتَّبِعُونَ إِلا الظَّنَّ وَمَا تَهْوَى الأَنْفُسُ

“Bê şik ew hema yê bi dûv hizir û xiyala û wî tiştî dikevin yê ku dilê wan dixwazît û xiyal diket.”[143]

Xudê Te‘ala dibêjît

وَمَا يَتَّبِعُ أَكْثَرُهُمْ إِلَّا ظَنًّا ۚ إِنَّ الظَّنَّ لَا يُغْنِي مِنَ الْحَقِّ شَيْئًا ۚ إِنَّ اللَّهَ عَلِيمٌ بِمَا يَفْعَلُونَ

“Bahra pitir ji wan hema yê bi dûv hizir û xiyalêt xwe ketîn, bê şik hizir û xiyal çû caran cihê heqiyê nagirin û faydeyî na dene mirovan. Ellahu Te‘ala yî zana ye bi wan tiştan hemyan ewêt ku ew diken.”[144]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَهَذَا صِرَاطُ رَبِّكَ مُسْتَقِيمًا قَدْ فَصَّلْنَا الآيَاتِ لِقَوْمٍ يَذَّكَّرُونَ

“(Ey Muhemmed!) Hema her ev dînê Îslamê ye, rêka Rebbê te ya heq û rast. Bi sûnd, Me ayet bi dûr û dirêjî yêt rohn û aşkira kirîn bo wan; ewêt ku hizrêt xwe diken û bo xwe şîreta werdigirin.”[145]

142 Duret elwa ‘izîn Îbrahîm ‘Ebdulbaqî
143 Sûreta Necm 24
144 Sûreta Yunus 36
145 Sûreta En‘am 126

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَأَنَّ هَٰذَا صِرَاطِي مُسْتَقِيمًا فَاتَّبِعُوهُ ۖ وَلَا تَتَّبِعُوا السُّبُلَ فَتَفَرَّقَ بِكُمْ عَن سَبِيلِهِ ۚ ذَٰلِكُمْ وَصَّاكُم بِهِ لَعَلَّكُمْ تَتَّقُونَ

“Bê şik eha hema her eve ye, rêka dînê Min ya heq û rast (anku rêka dînê Îslamê; rêka Qur’ana kerîm), vêca hûn hema her bibne tabi‘êt rêka dînê Min bitinê, qet hûn bi dûv çu rêk û ta û bayêt dî nekevin (heke hûn li dûv wan biçin û guhê xwe bidene wa) ew dê hewe ji rêka dînê Ellahu Te‘ala dûr û veder ken. Eha Ellahu Te‘ala bi vê hindê qewyatiyê li hewe diket; da ku hûn xwe biparêzin ji bê-emriya Wî.”[146]

Divêt, baş bizanîn û law fehim bikeyn, Busulman hema hind dê li ser rûyê ‘erdî diqaîm bin û dê bi ser bilindî diserketî bin li ser dujmin û neyarêt dînê xwe; hindî ku ew guhê xwe bi micidî bidene Xudayê xwe û xwe li ser rêka pêxemberê Wî qaîm ragirin; anku hindî ku ew li dînê xwe û îman û baweriya xwe xudan derkevin û pê ‘emel biken.

Belê gava Busulmana xwe şaş kir; ew bi dûv wan fikir, qanun û rêbazêt kafiran ketîn; ewêt ku evroke bîne bela serê wan kafiran bi xwe jî û Xûdê neket gava Busulmana bawer kir û got xilasiya me, rizgariya me dê bi van fikir, qanun û rêbazêt kafiran bi dest me ve êt û çêbît, eha ev e hîngê rezîlî û xusareta dinya û axretê ye û kafirya mezin e.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَعَدَ اللَّهُ الَّذِينَ آمَنُوا مِنكُمْ وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ لَيَسْتَخْلِفَنَّهُمْ فِي الْأَرْضِ كَمَا اسْتَخْلَفَ الَّذِينَ مِن قَبْلِهِمْ وَلَيُمَكِّنَنَّ لَهُمْ دِينَهُمُ الَّذِي

146 Sûreta En‘am 153

ارْتَضَى لَهُمْ وَلَيُبَدِّلَنَّهُمْ مِنْ بَعْدِ خَوْفِهِمْ أَمْناً يَعْبُدُونَنِي لا يُشْرِكُونَ بِي شَيْئاً وَمَنْ كَفَرَ بَعْدَ ذَلِكَ فَأُولَئِكَ هُمُ الْفَاسِقُونَ

“Ellahu Te‘ala soz û we‘de ya daye wan; ewêt ji hewe ji dil îman û bawerî înandî; kar û ‘emelêt baş kirîn ku bi sûnd, dê wan cihwar ket li ser rûyê ‘erdî li şûna muşrîkan, her wekî wan îmandarêt berî wan; ewêt ku borîn û çûyîn, Ellahu Te‘ala dê dînê wan ku dînê Îslamê ye; ew ê ku Wî bo wan hilbijartî û pê ji wan qayil bî dê bo wan mukum û qayim ragirît û dê halê wan guhorît û xweş ket û dê piştî wê tirsa bi ser wan da hatî wan êxîte nav êmnahî û tenahiyê. Ew dê her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Min bitinê ken û qet ew çu tiştan bo Min nakene hevkûf û şirîk jî. Heçî kesê piştî vê hindê kafir bibit, hîngê hema her ew in; ewêt ku ji rêka heq derketîn û fasiq bîn.”[147]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَكَانَ حَقًّا عَلَيْنَا نَصْرُ الْمُؤْمِنِينَ

“Nê fer û pêtivî ye li ser Me ku Em her harîkariya îmandaran bikeyn û wan biserbêxîn.”[148]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلا تَهِنُوا وَلا تَحْزَنُوا وَأَنْتُمُ الْأَعْلَوْنَ إِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِنِينَ

“(Ey gelî îmandaran!) Qet hûn xwe sist neken û xemgîn jî nebin, yêt serketî û ser feraz hema her hûn in, heke ku hûn îmandarêt heq û rast bin.”[149]

147 Sûreta Nur 55
148 Sûreta Rom 47
149 Sûreta Alî ‘Îmran 139

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلِلَّهِ الْعِزَّةُ وَلِرَسُولِهِ وَلِلْمُؤْمِنِينَ وَلَٰكِنَّ الْمُنَافِقِينَ لَا يَعْلَمُونَ

"Hûn baş bizanin rûmet û serketin hema her bo Ellahu Te'ala û bo Pêxemberê Wî û bo îmandara ye, belê ewêt minafiq vê hindê nuzanin û tênagehin!"[150]

Xudê Te'ala dibêjît:

مَن كَانَ يُرِيدُ الْعِزَّةَ فَلِلَّهِ الْعِزَّةُ جَمِيعًا إِلَيْهِ

"Heçî kesê serferazî û şeref bivêt û bixwazît bila ew baş bizanît serferazî û şeref her ya Ellahu Te'ala ye (ya di destê Wî da)."[151]

Xudê Te'ala dibêjît:

بَشِّرْ الْمُنَافِقِينَ بِأَنَّ لَهُمْ عَذَابًا أَلِيمًا الَّذِينَ يَتَّخِذُونَ الْكَافِرِينَ أَوْلِيَاءَ
مِنْ دُونِ الْمُؤْمِنِينَ أَيَبْتَغُونَ عِنْدَهُمْ الْعِزَّةَ فَإِنَّ الْعِزَّةَ لِلَّهِ جَمِيعًا

"(Ey Muhemmed!) Tu mizgîniyê bide minafiqa ku bê şik bo wan 'ezabeka gelek biêş û jan ya hey. Nê hema her ew in minafiq; ewêt ku mû'min û îmandaran dihêlin û diçin kafiran bo xwe dikene dost û piştevan, erê ma ew dixwazin bi wan û li nik wan serbilind û serferaz bin? Bê şik serbilindî û serferazî hemî hema her ya Ellahu Te'ala û bi Ellahu Te'ala ye."[152]

150 Sûreta Munafiqun 8
151 Sûreta Fatir 10
152 Sûreta Nîsa 139

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنَّمَا وَلِيُّكُمُ اللَّهُ وَرَسُولُهُ وَالَّذِينَ آمَنُوا الَّذِينَ يُقِيمُونَ الصَّلَاةَ وَيُؤْتُونَ الزَّكَاةَ وَهُمْ رَاكِعُونَ

"Bê şik dost û piştevanê hewe hema her Ellahu Te'ala ye û Pêxemberê Wî ye û ew ew in; ewêt îman û bawerî înandî; ewêt ku her bi rast î û durustî nivêjan diken û ji dil zekatê ji malê xwe diden û xwe bo Ellahu Te'ala diçemînin (anku her li ber emrê Wî dirawestayî)."[153]

'Umerê kurê Xettabî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Em ('Ereb) ummet û qewmekî we biyîn; em ji hemî ummet û qewma direzîl û perîşantir bûn, belê Xudê Te'ala bi hatina dînê Îslamê em yêt 'ezîz û serferaz kirîn, vêca çî gava me viya ku em xwe ji bilî dînê Îslamê bi tiştekî dî 'ezîz û serferaz bikeyn, îleh Xudê Te'ala dê me rezîl û perîşan ket.[154]

Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî:

Xudê Te'ala dê bi vê kitêbê anku Qur'anê hinde qewma serêxît û bilind ket, û Ew dê hindekêt dî jî pê şikênît û nizim ket.[155]

Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî:

Xudê Te'ala dê bi vî dînê Îslamê hinde qewma serêxît û bilind ket, û Ew dê hindekêt dî jî pê şikênît û nizim ket.[156]

Xudê Te'ala dibêjît:

تبَارَكَ الَّذِي نَزَّلَ الْفُرْقَانَ عَلَى عَبْدِهِ لِيَكُونَ لِلْعَالَمِينَ نَذِيرًا

153 Sûretas Maîde 55
154 Ji gotinêt îmamê 'Umer (Xudê jê razî bît)
155 Muslim
156 Tuhfetul-Ehwezî

“Ew Ellah çend yî bixêr û bereket e; Ew ê ku Furqan (anku ew Qur’ana kerîm ya ku heqiyê û batilî jêk cuda û vavêr diket) bo ‘ebdê xwe (Muhemmedî) hinartiye xwarê da ku ew pê xelk û ‘alema bitirsînît û hişyar biket.”[157]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُل لَّا أَسْأَلُكُمْ عَلَيْهِ أَجْرًا إِنْ هُوَ إِلَّا ذِكْرَىٰ لِلْعَالَمِينَ

“Tu, bêje: “Qet ez çu ucret û heqî pêş wî tiştî ve yê ku ez bo hewe dibêjim, ji hewe naxwazim. Bê şik ev Qur’ane, we‘z û şîrete bo hemî xelk û ‘alemê.”[158]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا الرَّسُولُ بَلِّغْ مَا أُنزِلَ إِلَيْكَ مِن رَّبِّكَ

“Ey Pêxember! Tu her wê Qur’anê ya ku ji layê Rebbê te ve bo te hatiye xwarê bo xelk û ‘alemê bixûne û bêje.”[159]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَبِمَا رَحْمَةٍ مِنَ اللهِ لِنْتَ لَهُمْ وَلَوْ كُنْتَ فَظًّا غَلِيظَ الْقَلْبِ لَانْفَضُّوا مِنْ حَوْلِكَ

“(Ey Muhemmed!) Tu bi xêra rehma Ellahu Te‘ala li gel wan yê nerm û helîm bî. Nê heke axiftinêt te dinexweş bane û dilê te yî reqba li gel wan, bê şik ew hemî da xwe ji rex û dorêt te dene paş û da belav bin.”[160]

157 Sûreta Furqan 1
158 Sûreta En‘am 90
159 Sûreta Maîde 67
160 Sûreta Alî ‘Îmran 159

Xudê Te‘ala dibêjît:

ادْعُ إِلَىٰ سَبِيلِ رَبِّكَ بِالْحِكْمَةِ وَالْمَوْعِظَةِ الْحَسَنَةِ ۖ وَجَادِلْهُم بِالَّتِي هِيَ أَحْسَنُ ۚ إِنَّ رَبَّكَ هُوَ أَعْلَمُ بِمَن ضَلَّ عَن سَبِيلِهِ ۖ وَهُوَ أَعْلَمُ بِالْمُهْتَدِينَ

“(Ey Muhemmed!) Tu her bi hîkmet û bi we‘z û şîretêt law gazî xelk û ‘alemê bike da ku ew bêne ser rêka Rebbê te û tu cedelê li gel wan bike; belê, bi wî terzî yê ku ji hemyan yî lawtir. Bê şik hema her Rebbê te çêtir dizanît ka ewêt ji rêka Wî derketîn û xirhayîn kî ne û her dîsa Ew çêtir dizanît ka ewêt hatîne ser rêka rast û hîdayetê jî kîne.”[161]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَإِنْ أَسْلَمُوا فَقَدِ اهْتَدَوْا وَإِنْ تَوَلَّوْا فَإِنَّمَا عَلَيْكَ الْبَلَاغُ

“Vêca heke ew jî teslîmî Ellahu Te‘ala bibin, bi sûnd, ev e, ew jî hatine ser rêka heq û rast; belê, heke wan pişta xwe da dînê Îslamê, hîngê ya li terefê te hema gazîkirin û gotine.”[162]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّكَ لا تَهْدِي مَنْ أَحْبَبْتَ وَلكِنَّ اللَّهَ يَهْدِي مَنْ يَشاءُ وَهُوَ أَعْلَمُ بِالْمُهْتَدِينَ

“(Ey Muhemmed!) Qet tu neşêy heçî kesê te bivêt bîniye ser rêka rast û hîdayetê, belê Ellahu Te‘ala yê hez biket, tînîte ser rêka rast û hîdayetê û her Ew çêtir dizanît ka ewêt hatîne ser rêka rast û hîdayetê kîne.”[163]

161 Sûreta Nehl 125
162 Sûreta Alî ‘Îmran 20
163 Sûreta Qeqes 56

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَيَنصُرَنَّ اللَّهُ مَنْ يَنصُرُهُ إِنَّ اللَّهَ لَقَوِيٌّ عَزِيزٌ الَّذِينَ إِنْ مَكَّنَّاهُمْ فِي الْأَرْضِ أَقَامُوا الصَّلَاةَ وَآتَوْا الزَّكَاةَ وَأَمَرُوا بِالْمَعْرُوفِ وَنَهَوْا عَنْ الْمُنْكَرِ وَلِلَّهِ عَاقِبَةُ الْأُمُورِ

“(Îmandarêt rast û durust hema her ew in;) ewêt ku heke Em wan li ser rûyê ‘erdî cihwar bikeyn û bikeyne hukumdar, ew dê her bi rast î û durustî nivêja ken û dê ji dil zekatê ji malê xwe den û dê emrî bi kirna başî û qenciya ken û dê nehya xelk û ‘alemê ken ji kirna xirabiya, dûmahîk û zivirîna hemî şol û kara hema her bal Ellahu Te‘ala ve ye.”[164]

Xudayê jorî ji kerema xwe ev Qur’ana kerîm bo Pêxemberê xwe Muhemmedî -selat û selam li ser bin- ya hinartî, da ku ew bi Qur’anê gazîkete xelk û ‘alemê û wan de‘wetî Tewhîdê, îman û baweriyê biket û piştî wî da ku ‘alim û zanayêt ummeta wî jî, her wekî wî û li ser dewsa wî, ew jî bi Qur’anê gazîkene xelk û ‘alemê û wan de‘wetî Tewhîdê; îman û baweriyê biken û bo wan bêjîn; baş rohn û aşkira biken.

Evroke ev wacibê he, anku teblîx û belavkirna Tewhîdê; beyan kirna rêka dînê Îslamê dikevîte ser milêt ‘alim û zanayêt me, divêt, ew bi şev û roj û bi ezmanekî fesîh û zelal, bêrawistan me‘na vê Qur’ana kerîm û sunneta Pêxemberî bi fehma Selefêt salih bi sebir, tehemul û bêtirs û xewf bo xelk û ‘alemê her bêjin û baş rohn û aşkira biken, her wekî Pêxemberê xwe Muhemmedî -selat û selam li ser bin- heta mirnê.

164 Sûreta Hec 41

Fer û pêtivî ye li ser hemî Busulmana, ku ew berî her tiştekî xwe bi‘elimîne Qur’ana xwe û me‘na wê baş bizanin, têbigehin û fehim biken, paşê di dûvra pê ‘emel biken û bo êkûdu jî bêjin, da ku rast bît Busulmanetiya me û da em pê rûspî bibin di dinya û axretê da.

Nê ya fer û pêtivî ye li ser me hemyan; em baş û law bi zanîn û têbigehîn ku em jî Busulmanîn û ji ummeta Muhemmedî ne -selat û selam li ser bin-û dînê me jî dînê Îslamê ye û ev Qur’ana Xudayê jorî bo Pêxemberê xwe Muhemmedî -selat û selam li ser bin- hinartî bahra me jî ya têda hey û ew ya me ye jî.

Vêca ji ber vê hindê ferz û pêtivî ye li ser me jî her wekî hemî Busulmanêt îmandar, em jî li vê Qur’ana xwe û sunneta Pêxemberê xwe -selat û selam li ser bin- xweyî û xudan derkevîn û bo êkûdu bêjîn û ka Xudayê me çî ji me dixwazît û ka Wî divêt, em di çewa bîn di jîn û jiyara xwe da, Ferz e li ser me hemyan ‘eynen em wesa xwe rast û durust bikeyn ji hemî la ve li ser rêka Pêxemberê Wî.

Her wekî em hemî baş dizanîn bi hatina dînê Îslamê, anku bi hatina vê Qur’ana kelamê Xudayê jorî dînêt dî hemî yêt betal û nesxe bîn, dînê rast, durust û meqbûl li nik Xudayê Jorî, hema her ev dînê Îslamê bitinê ye, ev dîne jî bo hemî qewm û mileta, bo hemî xelk û ‘alemê yê hatî bêferq û cudahî.

Vêca heçî kesê ji bilî vî dînê Îslamê bo xwe li dînekî dî bigerhît yan jî biçîte ser hinde ta û ba û rêkêt dî, qet Xudayê Jorî ji wî qebûl naket, ew di dinya û axretê da dê rûreş û şermizar bît.

Xudê Te‘ala dibêjît:

الَّذِينَ يُبَلِّغُونَ رِسَالَاتِ اللَّهِ وَيَخْشَوْنَهُ وَلَا يَخْشَوْنَ أَحَدًا إِلَّا اللَّهَ

"Ew pêxember, ewêt ku wê wehyê; ya ku Ellahu Te'ala bo wan hinartî, radigehînin; bo xelk û 'alemê û dibêjin, ew hema her ji dil ji Ellahu Te'ala bitinê ditirsin û ew ji Ellahu Te'ala pêvetir qet ji kesekî dî natirsin."[165]

Xudê Te'ala dibêjît:

فَهَدَى اللهُ الَّذِينَ آمَنُوا لِمَا اخْتَلَفُوا فِيهِ مِنَ الحَقِّ بِإِذْنِهِ وَاللهُ يَهْدِي مَنْ يَشَاءُ إِلَى صِرَاطٍ مُسْتَقِيمٍ

"Belê Ellahu Te'ala, bi anehiya xwe ewêt îman û bawerî înandî gehandine ser wê rêka heq; ewa ku ehlê ehlul-Kîtab di derheqa wê da cirûbir dikir, heçyê Ellahu Te'ala hez biket Ew dê wî înîte ser rêka heq û rast."[166]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلاَ تَلْبِسُواْ الْحَقَّ بِالْبَاطِلِ وَتَكْتُمُواْ الْحَقَّ وَأَنتُمْ تَعْلَمُونَ

"Newebît hûn heqiyê di nav batilî hilneken û hûn bi zanîn jî heqiyê ne veşêrin û berzeneken."[167]

Xudê Te'ala dibêjît:

يُرِيدُونَ لِيُطْفِئُوا نُورَ اللَّهِ بِأَفْوَاهِهِمْ وَاللَّهُ مُتِمُّ نُورِهِ وَلَوْ كَرِهَ الْكَافِرُونَ

"Kafiran li bere û wan divêt, bi devêt xwe ew ronahiya dînê Ellahu Te'ala (anku ronahiya Qur'anê) bitemrînin. Belê, pa Ellahu Te'ala ronahiya dînê xwe her dê temam ket, çenda ku kafir hezneken (û ne bi dilê wan jî bît)."[168]

165 Sûreta Ehzab 39
166 Sûreta Beqere 213
167 Sûreta Beqere 42
168 Sûreta Seff 8

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلاَ تَكُونُواْ كَالَّذِينَ تَفَرَّقُواْ وَاخْتَلَفُواْ مِن بَعْدِ مَا جَاءهُمُ الْبَيِّنَاتُ وَأُوْلَـئِكَ لَهُمْ عَذَابٌ عَظِيمٌ

“Newebît (ey gelî îmandaran!) Hûn şitî wan nebin ewêt ku piştî heqî bo aşkira bî paşê jêk belav bîn û ketîne îxtîlafê û mayne pêk ve. Eha bo wan ‘ezabeka gelek mezin ya hey.”[169]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَالَّذِينَ كَفَرُوا بَعْضُهُمْ أَوْلِيَاءُ بَعْضٍ ۚ إِلَّا تَفْعَلُوهُ تَكُن فِتْنَةٌ فِي الْأَرْضِ وَفَسَادٌ كَبِيرٌ

“Ewêt kafir bûn, ew hemî bi carekê (her harîkar û) piştevan û dostêt êkûdune. (Vêca ey gelî Busulmana) heke hûn jî li hemberî kafiran (xwe nekene êk û harîkarî û piştevaniya êkûdu neken), li ser rûyê ‘erdî fitne û belayeka gelek mezin dê qewimît û peyda bît.”[170]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا خُذُوا حِذْرَكُمْ

“Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Hûn (li hemberî dujminê xwe) baş haziriya xwe biken û dihişyar bin.”[171]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَمَنِ اعْتَدَىٰ عَلَيْكُمْ فَاعْتَدُوا عَلَيْهِ بِمِثْلِ مَا اعْتَدَىٰ عَلَيْكُمْ ۚ وَاتَّقُوا اللَّهَ وَاعْلَمُوا أَنَّ اللَّهَ مَعَ الْمُتَّقِينَ

169 Sûreta Alî ‘Îmran 105
170 Sûreta Enfal 73
171 Sûreta Nîsa 71
Sûreta Enfal 60

"Vêca heçî kesê bi ser hewe da bêt û şerî li gel hewe biket, ka ew dujmin bi çî û çewa têne ser hewe, hûn jî wesa herne ser wan û şerî li gel wan biken. Hûn ji Ellahu Te'ala bitirsin; (bê-emriya Wî neken) û baş bizanin Ellahu Te'ala bi harîkariya xwe her yê li gel mutteqî û dîndaran."[172]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَأَعِدُّوا لَهُم مَّا اسْتَطَعْتُم مِّن قُوَّةٍ وَمِن رِّبَاطِ الْخَيْلِ تُرْهِبُونَ بِهِ عَدُوَّ اللَّهِ وَعَدُوَّكُمْ وَآخَرِينَ مِن دُونِهِمْ لَا تَعْلَمُونَهُمُ اللَّهُ يَعْلَمُهُمْ ۚ

"(Ey gelî Busulmana!) Hindî ku ji hewe bêt; hûn bi hêz û quweta û wan hespêt girêdayî bo cîhadê û şerê kafira, baş xwe hazir û amade biken; da ku hûn pê dujminê Ellahu Te'ala û dujminê xwe bitirsînin û hindekêt di jî ewêt ku hûn wan nasnaken, belê Ellahu Te'ala wan diniyasît."[173]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَالْمُؤْمِنُونَ وَالْمُؤْمِنَاتُ بَعْضُهُمْ أَوْلِيَاءُ بَعْضٍ يَأْمُرُونَ بِالْمَعْرُوفِ وَيَنْهَوْنَ عَنِ الْمُنْكَرِ

"Zelamêt îmandar û jinkêt îmandar hemî pêk ve her harîkar û piştevanêt êkûdune, ew her emrê bi kirna başî û qenciya diken û rê li ber kirna xirabî û nebaşiya digirin."[174]

Ey gelî îmandaran! Hûn 'alayê Tewhîdê; heqiyê her bilind ragirin, hûn li vê de'we û doza xwe xudan derkevin, hûn hemî bêtirs desta têk bigrin û bibne êk rist û rêz li hemberî dujminêt dînî; anku li hemberî bîd'etçî, muşrîk û kafira.

172 94 Sûreta Beqere
Sûreta Tewbe 71
173 Sûreta Enfal 60
174 Sûreta Tewbe 71

Dînê Îslamê dînê Tewhîdê ye, tiştê jirê ve dînê Îslam dibêjîte xelk û ‘alemê eve ye; gelî mirovan hûn hemî werin êkatiya Ellahu Te‘ala qebûl biken û hûn hemî new‘êt ‘îbadetî her bo Wî bitinê biken, herdîsa dînê Îslam dibêjîte xelk û ‘alemê; hûn hemî xwe ji şirkê û ji wan eger û sebeba jî dûr biken; ewêt ku mirov pê digehne nav da‘urokêt şirkê. Piştî îman û bawerkirna bi êkatiya Ellahu Te‘ala, dînê Îslamê gelek li ser êkêtiya ummetê jî radiwestît û nehî ya kirî ji îxtîlaf û tefrîqê, nexasima di mijara Tewhîdê û ‘eqîdê da.

Her wekî em hemî dizanîn serîkaniya dînê Îslamê; Qur’ana Pîroz, sunnet, îcma‘ û qiyas e, ye‘nî şerî‘etê dînê Îsalamê; anku Tewhîd, ‘eqîde û ‘îbadet; hemî kar û barêt dînî divêt, li ber ronahiya Qur’ana Pîroz û sunneta sehîh bitinê bêne aşkira kirin. Çunku hindek ‘ailm û zana dibêjin: Îcma‘ piştî Pêxemberî-selat û selam li ser bin- li ‘esrê se‘adetê sihabiya li ser hinde mes’ela ya kirî, vî zemanî ne mumkûne ku îcma‘ bête kirin û jixwe qiyas jî; qiyasul-‘Île û qiyasa celî jî ser ji Qur’ana Pîroz û hedîsêt Pêxemberî -selat û selam li ser bin-yêt durust e .

Xudê Te‘ala dibêjît:

شَرَعَ لَكُم مِّنَ الدِّينِ مَا وَصَّىٰ بِهِ نُوحًا وَالَّذِي أَوْحَيْنَا إِلَيْكَ وَمَا وَصَّيْنَا بِهِ إِبْرَاهِيمَ وَمُوسَىٰ وَعِيسَىٰ ۖ أَنْ أَقِيمُوا الدِّينَ وَلَا تَتَفَرَّقُوا فِيهِ

“(Ey gelî mirovan) Ellahu Te‘ala ew tişt; yê ku emrê Nûhî pê kirî û (Ey Muhemmed!) ev Qur’ana Me bi wehî bo te hinartiye xwarê û ew tiştê Me emrê Îbrahîmî, Mûsay û ‘Îsay pê kirî, Me ew bo hewe jî (ey gelî mirovan!) kire rêbaz û dîn û hûn her dînê xwe qayim ragirin û hûn diderheqa dînî da nemîne pêk ve û jêk belav nebin).”[175]

175 Sûreta Şura 13

Xudê Te‘ala dibêjît:

ثُمَّ جَعَلْنَاكَ عَلَى شَرِيعَةٍ مِنَ الأَمْرِ فَاتَّبِعْهَا وَلا تَتَّبِعْ أَهْوَاءَ الَّذِينَ لا يَعْلَمُونَ

“(Ey Muhemmed!) Paşê di derheqa dînî da Me tu jî yê kirye xudanê şerî‘etekî serbi xwe, vêca tu her li dûv wî şerî‘etî here û pê ‘emel bike, newebît çû caran tu bi dûv hewa û hewesê cahêl û nezana nekeve.”[176]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لِكُلٍّ جَعَلْنَا مِنكُمْ شِرْعَةً وَمِنْهَاجًا ۚ

“Me, bo herekê ji hewe (ey gelî Busulmana, File û Cûhya!) Şerî‘et û rêkek ya danadî û diyar kirî, (belê piştî hatina Qur’ana Pîroz anku dînê Îslamê dînê Cûhî û Fila ew hemî yêt nesxe û betal bîn).”[177]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لِّكُلِّ أُمَّةٍ جَعَلْنَا مَنسَكًا هُمْ نَاسِكُوهُ ۖ فَلَا يُنَازِعُنَّكَ فِي الْأَمْرِ ۚ

“Me, bo her ummetekê rêbaz û şerî‘etek yê danadî, wan pê ‘emel dikir. (Ey Muhemmed!) Vêca bila di derheqa şerî‘etê te da ew li gel te nekevne hevrikiyê.”[178]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَنْ يَرْغَبُ عَنْ مِلَّةِ إِبْرَاهِيمَ إِلَّا مَنْ سَفِهَ نَفْسَهُ ۚ وَلَقَدِ اصْطَفَيْنَاهُ فِي ا لدُّنْيَا ۖ وَإِنَّهُ فِي الْآخِرَةِ لَمِنَ الصَّالِحِينَ

176 Sûreta Casiye 18
177 Sûreta Maîde 48
178 Sûreta Hec 67

"Erê ma ji yê sahêlk û behîme pêvetir kî dî xwe ji dînê Îbrahîmî didete paş? Bi sûnd, Me Îbrahîm di dinyayê da yê hilbijartî, bê şik di axretê jî da ew ji mirovêt baş û kêrhatî ye.[179]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمَا كَانَ لِمُؤْمِنٍ وَلَا مُؤْمِنَةٍ إِذَا قَضَى اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَمْرًا أَنْ يَكُونَ لَهُمُ الْخِيَرَةُ مِنْ أَمْرِهِمْ وَمَنْ يَعْصِ اللَّهَ وَرَسُولَهُ فَقَدْ ضَلَّ ضَلَالًا مُبِينًا

"Qet'iyen durust nîne bo çu zelamêt îmandar û jinkêt îmandar demê ku Ellahu Te'ala û Pêxemberê Wî li ser tiştekî hukmek da, ew rabin bo xwe wê hilbijêrin û biken ya ku dilê wan dixwazît. Heçî kesê bê-emriya Ellahu Te'ala û Pêxemberê Wî biket (anku şerî'etî qebûl neket), bê şik ew xirha bixirhaneka aşkira (ji rêka heq û rast dûr ket)"[180]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمَا يَنْطِقُ عَنِ الْهَوَى اِنْ هُوَ إِلَّا وَحْيٌ يُوحَى

"Qet ew anku Muhemmedî -selat û selam li ser bin- ji def xwe, çu tişt negotiye û nabêjît. Bê şik (belê ew Qur'an ya ku ew bo hewe dixûnît), ew bo wî bi wehî ya tête xwarê."[181]

Xudê Te'ala dibêjît:

الٓرٰ كِتَٰبٌ اَنزَلْنَٰهُ إِلَيْكَ لِتُخْرِجَ اَلنَّاسَ مِنَ اَلظُّلُمَٰتِ إِلَي اَلنُّورِ

"(Ey Muhemmed!) Ev Qur'ane kitêbeke, Me bo te ya hinartiye xwarê da ku tu bi wê xelkê ji nav taryatiya

179 Sûreta Beqere 130
180 Sûreta Ehzab 36
181 Sûreta Necim 3

derbêxî û bibeye ber ronahiyê bi destûra Rebbê wan û bal rêka heq û rast; ku ew rêka wî Ellahî ye, Ew ê ku yî xurt û jêhatî û her hejî medh û sena."[182]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَأَنْزَلَ اللَّهُ عَلَيْكَ الْكِتَابَ وَالْحِكْمَةَ

"(Ey Muhemmed!) Ellahu Te'ala kitêb û hîkmet (anku Qur'an û sunnet) bo te yêt hinartîne xwarê."[183]

Meqsed ji kelîma Hîkmet di Qur'anê da, sunneta Pêxemberê Xudê Te'ala ye-selat û selam li ser bin.

Îmamê Şafi'î (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Min ji wan 'alima yê guhlê bî, Ewê t ku di derheqa Qur'anê da ez jê razî, wan hemyan her digot: (Hîkmet, sunneta Pêxemberê

Xudê Te'ala ye).[184]

Pêxemberî-selat û selam li ser bin-yê gotî: (Xwe hişyar biken û baş bizanin, Xudê Te'ala hindî Qur'anê li gel Qur'anê yê daye min û bo min yê hinartî).[185]

Dîsa Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- dibêjît: (Heçî kesê pişta xwe bidete sunneta min û rêka min terk biketi ew ne ji min e).[186]

Îmamê Malik (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Sunneta Pêxemberî -selat û selam li ser bin-Gemya Nuh Pêxemberî ye (selam li ser bin) yê lê suwar bît ew dê xilasbît û yê jê vemînît; lê suwar nebît ew dê xendiqît).[187]

182 Sûreta Îbrahîm 1
183 Sûreta Nisa 113
184 Er-Risale, Îmamê Şafi'î
185 Zanayê mezin Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya Sehîhe
186 Buxarî
187 Ji kitêba tarîxa Bexda

Hesanê kurê ‘Etiyê Dîmeşqiyê Tabi’î (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Ka çewa Cebraîlî (silav li ser bin) Qur’an bi wehî bo Pêxemberî-selat û selam li ser bin- înandiye ‘eynen sunnet jî (anku hedîs jî) wî wesa ji terefê Xudê Te‘ala bi wehî bo Pêxemberî ya înandî).[188]

Îmamê Şafi‘iî -Xudê jê razî bît- dibêjît: (Çî hedîsa zar Pêxemberî -selat û selam li ser bin-hatî (û ya rast bît wî gotibît) ew hedîs gotina min e; ez wê qebûl dikem, çenda ku hewe ew hedîs ji min jî guhlê nebibît jî ).[189]

Herdîsa Îmamê Şafi‘iî-Xudê jê razî bît- dibêjît: (Gotina hemî Busulmana li ser vê hindê êk e; anku wan yê gotî: (Çî kesekê gotineka Pêxemberî -selat û selam li ser bin-bo aşkira bît (ku belê Pêxemberî ew hedîs ya gotî û ya rast e) hîngê heram e û ne durust e bo wî ku ew ji ber gotina kesekê wê hedîsê bihêlît û pê ‘emel neket).[190]

Heta Xudê Te‘ala dibêjîte Pêxemberî xwe Muhammedî -selat û selam li ser bin-:

وَأَنزَلْنَا إِلَيْكَ الذِّكْرَ لِتُبَيِّنَ لِلنَّاسِ مَا نُزِّلَ إِلَيْهِمْ وَلَعَلَّهُمْ يَتَفَكَّرُونَ

“(Ey Muhemmed!) Eha ev e Me, bo te jî Qur’an hinarte xwarê da ku tu wî tiştî; yê ku bo mirovan hatiye xwarê (anku hukum û ehkamêt dînî bi hedîsêt xwe) rohn û aşkira bikey û bêjî, da ku ew jî hizrêt xwe biken û baş têbgehin.”[191]

Qet‘iyen bêhedîs Qur’an naête zanîn û fehim kirin, jixwe yê bi bîr û bawerî bêjît hema bo me Qur’an bitinê bes e, ew kes kafir dibît.

---

188 Darimî û Îbin Hecer (Xudê ji wa razî bît)
189 Îbn Ebî Hatem (Xudê jê razî bît)
190 Kitêba el-Lfulanî 68
191 Sûreta Nehl 44

Eve Ellahu Te‘ala bi xwe jî, zar Pêxemberî xwe dibêjît:

وَاُوحِىَ اِلَىَّ هَذَا الْقُرْاَنُ لاُنْذِرَكُمْ بِهِ وَمَنْ بَلَغَ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje: Bê şik Ellahu Te‘ala ev Qur’ana he bi wehî bo min ya hinartî; da ku ez hewe û heçî kesê bo hatiye gotin (û pê heshayî) pê bitirsînim û hişyar bikem.”[192]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ إِنَّمَا أُنْذِرُكُمْ بِالْوَحْيِ وَلَا يَسْمَعُ الصُّمُّ الدُّعَاءَ إِذَا مَا يُنذَرُونَ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje: “Ez hema bi wê wehyê ya ku bo min hatî hewe ditirsînim û hişyar dikem.” Belê, yêt kerr haj gazyê nabît demî ku ew têtе tirsandin û hişyar kirin.”[193]

Di vê ayetê da jî Ellahu Te‘ala bo me behsê Qur’anê diket û dibêjît:

إِنّ هَذَا الْقُرْآنَ يِهْدِي لِلّتِي هِيَ أَقْوَمُ وَيُبَشّرُ الْمُؤْمِنِينَ الّذِينَ يَعْمَلُونَ الصّالِحَاتِ أَنّ لَهُمْ أَجْراً كَبِيراً

“Bê şik ev Qur’ane berê mirovan didete wê rêkê; ya ku ji hemî rêka rast ir û qayim tir û mizgîniyê didete wan îmandaran; ewêt ku kar û ‘emelêt baş diken ku bê şik bo wan xelatekî gelekî mezun yê hey.”[194]

Eve me ji van ayetêt jorî zanî ku bê şik û şuphe Ellahu Te‘ala Muhemmed Pêxember -selat û selam li ser bin-bo hemî mirovan; bo hemî qewm û mileta bi ‘umumî û tebayî yê hinartî û yê kirye Pêxemberê axirê zemanî, divêt, em

192 Sûreta En‘am 19
193 Sûreta Enbiya 45
194 Sûreta Îsra 9

jî bi viyan û ji dil xwe di rêka wî; anku di Qur'ana kerîm û sunneta Pêxemberê Wî werbikeyn û her wî bo xwe bikeyne rêber, qudwe û nimûne, û her Qur'ana kerîm û sunneta Pêxemberî bo xwe û di nav xwe da bikeyine hekem û ji dil pê ʻemel bikeyn.

Xudê Teʻala dibêjît:

لَقَدْ كَانَ لَكُمْ فِي رَسُولِ اللهِ أُسْوَةٌ حَسَنَةٌ

"(Ey gelî îmandaran!) Bi sûnd, bo hewe di gotin, kar û kirin; (di hal û ehwalêt resulê Xudê Teʻala da) nimûneyeka gelek baş û berketî ya hey; anku hûn (di hemî şol, kar û barêt dînê xwe û di jîn û jiyara xwe da) hema her çav li Pêxemberê Xudê Teʻala biken."[195]

Em hemî baş dizanîn binîşe, rêk, rêbaz û serîkehnîya dînê Îslamê hema Qur'ana kerîm û sunneta Pêxemberê Wî ye, anku gotin û kirin û teqrîrêt wî ne; (teqrîr ew tişte yê ku sehabiya li def wî kirî û gotî, yan jî wî ji wan guh lê bî û bihîstî û çu negotî; yeʻnî qebûl kirî). Ev e Pêxemberî bi xwe jî di xutba xwe ya Xatir xwastinê da yê gotî: Bê şik min di dûv xwe ra bo hewe du emir (anku du tiştêt aşkira) Qur'ana kerîm; ku kelamê Ellahu Teʻala ye û sunneta Pêxemberê Wî (ew behsê xwe diket) yêt hêlayîn, vêca hindî ku hûn xwe bi van her duka ve qayim girê biden û pê ʻemel biken qet hûn şaş nabin û naxirhin.

195 Sûreta Ehzab 21



## TU XUDAYÊ XWE BİNYASE
## ( ELLAH )

Di derheqî çewatiya zat û sîfetêt Xudê Te‘ala da, hindî hizr û xiyalêt têne ser dilê mirovan û ew texmînêt ew diken, ew hemî ji binî dibatilin; çunku qet kesek bi xiyal û texmînêt xwe neşêt çewatiya zat û sîfetêt Xudê Te‘ala aşkira biket bi çu terz û rêka, qet‘iyen Xudê Te‘ala şitî çu tiştan nîne û qet çu tişt jî wekî Wî nînin û nabin jî.

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَيْسَ كَمِثْلِهِ شَيْ ء

“Qet‘iyen çu tiştek şitî Ellahu Te‘ala nîne û nabît jî.”[196]

Dîsa Xudê Te‘ala dibêjît:

فَلَا تَضْرِبُواْ لِلَّهِ ٱلْأَمْثَالَ

“Ey gelî mirovan! Vêca hûn bo Ellahu Te‘ala (di zat û sîfetêt Wî da) çu hevkûf û hevala çêneken.”[197]

Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin- yê gotî: Gelî mirovan! Hûn hizr û tefekura xwe di mexluqêt Xudê Te‘ala da biken; (da ku hûn qudret û mezinahiya Xudê Te‘ala baş bi zanin û fehim biken, belê hûn hizr û tefekura

196 Sûreta Şûra 11
197 Sûreta Nehl 74

xwe di zat (û sîfetêt) Xaliqî da neken; çûnku aqilê beşera yî mehdude, ma dê çewa di heqîqet û rastiya zat (û sîfetêt) Xudê Te‘ala gehît û fehim ket.[198]

Navê ji hemî nava yî şirîn û tazetir hema her navê Xudê Te‘ala ye; anku navê Ellah bitinê ye.

Feqiyê Teyran jî (Xudê jê razî bit) dibêjît:

((ELLAH)) çi zatek Ehsen e...

Xudê Te‘ala dibêjît:

هَلْ تَعْلَمُ لَهُ سَمِيًّا

“(Ey Muhemmed!) Erê, ma tu dizanî, kesekî dî ji bilî Xudê Te‘ala bi vînavê ((ELLAH)) hatiye navkirin û heye? Nexêr, qet kesekî dî di dinyê yê da, bi vî navê ((ELLAH)) ne hatiye navkirin û nîne.”[199]

Rêka niyasîna zatê Xudê Te‘ala, hema her bes bi rêka wehyê ve anku bi Qur’an û sunneta rast ve ya girêda ye, qet aqilê mirovan di derheqa niyasîna zatê Xudê Te‘ala da neşêt çu bêjît; çûnku aqilê mirovan yî mehdude, vêca qet çênabît û nedurust e mirov bi hizîr û xiyalêt xwe di derheqa zatê Xudê Te‘ala da xeber bidet û baxivît.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَمَّا جَاءَ مُوسَىٰ لِمِيقَاتِنَا وَكَلَّمَهُ رَبُّهُ قَالَ رَبِّ أَرِنِي أَنْظُرْ إِلَيْكَ ۚ قَالَ لَنْ تَرَانِي وَلَٰكِنِ انْظُرْ إِلَى الْجَبَلِ فَإِنِ اسْتَقَرَّ مَكَانَهُ فَسَوْفَ تَرَانِي ۚ فَلَمَّا تَجَلَّىٰ رَبُّهُ لِلْجَبَلِ جَعَلَهُ دَكًّا وَخَرَّ مُوسَىٰ صَعِقًا ۚ فَلَمَّا أَفَاقَ قَالَ سُبْحَانَكَ تُبْتُ إِلَيْكَ وَأَنَا أَوَّلُ الْمُؤْمِنِينَ

198 Kitêba Usul Î’tîqad Ehlussnetî û Cema‘etî. Ya îmam Ellalîkanî
199 Sûreta Meryem 65

"Vêca demê Mûsa li ser wî qewlî yê ku Me, bo diyar kirî hatî û Rebbê wî li gel wî axiftî, Mûsay got: "Ey Rebbê min! Dê ka Tu xwe nîşa min bide; da ku ez berê xwe bideme Te û Te bibînim." Ellahu Te'ala gotê: "Tu Min nabînî, belê tu berê xwe bide wî çiyayî, heke ew li cihê xwe ma, hîngê tu jî dê Min bînî." Vêca demê Rebbê wî xwe bo çiyayî diyar kirî, çiya herift û jêk pijikî (rast î 'erdî bû), herhadirî Mûsa ket û nehişyar bû. Vêca demê ew hatiye ser hemdêt xwe û hişyar bî, wî got: "Ey Rebbê min! Tu ji hemî kêmasiyan yî pak û munezehî, min bal Te ve tobeye û ji qewmê xwe ez ewim yê ku jirêve min îman û bawerî bi Te înandî."[200]

Ev ayete delaletê dikete ser wê hindê ku Musa wê gavê (silav li ser bin) yê ketî û nehişyar bî, wî Xudayê xwe neditî ye. Me'na vê hindê eve ye; dîtina Xudê Te'ala di dinya yê da ne mumkine û mustehîle, belê dîtina Xudê Te'ala li axretê bo îmandaran mumkîne û ne mustehîle.

Xudê Te'ala dibêjît:

لَّا تُدْرِكُهُ الْأَبْصَارُ وَهُوَ يُدْرِكُ الْأَبْصَارَ وَهُوَ اللَّطِيفُ الْخَبِيرُ

"Qet çu çav qetrenaken û neşên Wî bibînin. Belê, Ew çava (û hemî tiştan bi timamî dibînît). Ew hemî sir û nepeniya bi timamî dizanît û yî agehdar e bi hemî tiştan."[201]

Deyka me 'Aîşa (Xudê jê razî bît) dibêjît: Heçî kesê bêjîte te Muhammedî -selat û selam li ser bin- Xudayê xwe yê dîtî bê şik ew direwa diket. Nê Xudê Te'ala bi xwe dibêjît:

200 Sûreta E'raf 143
201 Sûreta En'am 103

لا تُدْرِكُهُ الْأَبْصَارُ ...:

“Qet çu çav qetrenaken û neşên Wî bibînin.”[202]

Dîtina Xudê Te‘ala li axretê bo mu’min û îmandaran mumkîne û qet ne mûstehîle.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وُجُوهٌ يَوْمَئِذٍ نَّاضِرَةٌ إِلَى رَبِّهَا نَاظِرَةٌ

“Wê rojê hinde ser û çav di dirohn û geş in; çûnku ew her berê xwe didene Rebbê xwe.”[203]

□ Belê, dîtina Xudê Te‘ala li axretê bo kafiran qet ne mumkîne û mûstehîle.

Xudê Te‘ala dibêjît:

كَلَّا إِنَّهُمْ عَنْ رَبِّهِمْ يَوْمَئِذٍ لَمَحْجُوبُونَ ثُمَّ إِنَّهُمْ لَصَالُوا الْجَحِيمِ

“Nexêr, bê şik wê rojê ew ji dîtina Rebbê xwe dibêbahr in. Paşê bê şik ew dê çine di nav agirê Cehnemê da.”[204]

Ji Ebû Hureyreyî (Xudê jê razî bît) ya hatiye riwayet kirin ew dibêjît; hindeka gote Pêxemberê Xudê -selat û selamêt Xudê li ser bin- :Gelo ma li roja qiyametê em dê Rebbê xwe bînîn an ne! Pêxemberê Xudê gote wa: Ma li demê heyva li çardê bît û çu ‘ewir li ‘esmanî nebît, ma hûn wê gavê bo dîtina heyvê dê bi şik kevin, îna wan got: Nexêr, ya Pêxemberê Xudê, hîngê heçî kesê berê xwe bidete ‘esmanî, ew dê wê heyva li çardê bînît. Dîdûv ra Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin- Got: Li demê çu ‘ewir li ‘esmanî nebît, ma hûn bo dîtina rojê dê bi şik ke-

202 Buxarî
203 Sûreta Qiyamet 22-23
204 Sûreta Mutefifîn 15-16

vin, îna wan got: Nexêr, ya Pêxemberê Xudê, Pêxemberê Xudê -selat û selamêt Xudê li ser bin- got: Muheqeq ‘eynen herwesa li roja qiyametê hûn anku îmandar dê Rebbê xwe bînin.[205]

Pêxemberê Xudê -selat û selamêt Xudê li ser bin- yê gotî: Hûn baş bizanin û fehim biken, heta ku hûn nemirin, ey gelî îmandaran, hûn Rebbê xwe nabînin.[206]

Mademku ne mumkîne û muhale ku mirov Xudê Te‘ala di dinyayê da bi çavêt xwe bibînin, divêt îmandar her guhê xwe bi dene Qur’an Pîroz û sunneta rast; anku gotinêt Pêxemberê Xudê-selat û selamêt Xudê li ser binka ew di derheqa zatê Xudê Te‘ala da bo me çî dibêjin, fer e li ser me ku em hema her we Xudayê xwe binyasîn, anku her wekî Qur’ana Pîroz û sunneta muteher e jê xeber diden.

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّمَا اللَّهُ إِلَٰهٌ وَاحِدٌ ۖ

Bê şik Ellahu Te‘ala, Îlahekî bitinê ye [207]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ إِلَٰهَكُمْ لَوَاحِدٌ

“(Gelî mirovan hûn baş bizanin û fehim biken) bê şik Îlahê hewe hema her îlahekî bitinê ye, teke.”[208]

205 Buxarî û Muslim
206 Muslim
207 Sûreta Nisa 171
208 Sûreta Saffat 4

Ellahu Te‘ala dibêjît:

وَ ما مِنْ إِلهٍ إِلَّا اللّٰهُ الْواحِدُ الْقَهَّارُ

“Qet‘iyen ji Ellahu Te‘ala pêvetir çu îlahêt dî nînin û “(Ew îlahekî bitinê ye (di zat û sîfetêt xwe da û di kar û kirnêt xwe da), Ew yî xurt e; (Wî hemî mexluq yêt çemandîne di bin emrê xwe da û yêt berzeftî xwe kirin ji hemî la ve).”[209]

Xudê Te‘ala dibêjît:

اللّٰهُ لا إِلَهَ إِلاَّ هُوَ رَبُّ الْعَرْشِ الْعَظِيمِ

“Ellahu Te‘ala, Îlahekî bitinê ye, ji Wî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin, her ew e Rebbê ‘Erşê mezin.”[210]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ أَغَيْرَ ٱللَّهِ أَبْغِى رَبًّا وَهُوَ رَبُّ كُلِّ شَىْءٍ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: “Erê ma ez ji bilî Ellahu Te‘ala bo xwe daxwaza Rebbekî dî bikem, nê hema her Ew bitinê Rebbê hemî tişta ye.”[211]

Xudayê Jorî yî bilind e li ser tebeqa ‘esmanê heftê, Wî “Îstiwa ya kiriye li ser ‘erşî; anku Ew li ser ‘erşî yê rawestayî ye; bi rawestaneka layiqî zatê Wî yê pak û berî ji hemî kêmasî û qusûriya, qet Ew ne muhtacî ‘erşiye jî, belê hikmeteka gelek mezin di vê hindê da ya hey aqilê mirovan tênagehît.

209 Sûreta Sat 65
210 Sûreta Neml 26
211 Sûreta En‘am 164

Eve Xudayê Jorî bi xwe dibêjît:

الرَّحْمَٰنُ عَلَى الْعَرْشِ اسْتَوَىٰ

“Xudayê Rehman, bi zatê xwe îstiwa ya kiriye li ser ‘erşî; (bi sekinîn û rawestaneka hejî û layiqî zatê Wî).”[212]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَخَافُونَ رَبَّهُمْ مِنْ فَوْقِهِمْ وَيَفْعَلُونَ مَا يُؤْمَرُونَ

“Ew ji wî Rebbê xwe ditirsin; Ew ê ku di ser wan da, ka Ew çî emrî li wan diket ew her wê gavê bi cih tînin û diken.”[213]

Îstiwan; bilindbîn û rawestana Xudayê Jorî ye li ser ‘erşî, ev e sîfetekî xeberî û fi‘lî ye, yî sabite di Qur’an û sunneta rast da yê hatî û yî aşkira ye.

Em îman û baweriyê bi bilindbîn û rawestana Xudayê Jorî tînîn; ku Ew bi bilindbîneka layiqî zatê xwe yê mezin li ser ‘erşî yî rawesta ye; bêçewayî û qet ne durust e em pirsyarê jî ji çewaya îstiwaya Wî bikeyîn; çunku ev e ji ‘îlmê xeybê ye.

Îmamê ebu Henîfe (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Ew kesê bêjît; ez nuzanim ka Xudayê min li ‘erdîye yan jî li ‘esmana ye, ew dê kafir bît, ‘eynen her wesa ew kes jî dê kafir bît yê ku bêjît; Xudayê min yê li ser ‘Erşî, belê ez nuzanim ka ‘Erş li ser ‘esmana ye yan jî li ‘erdî ye).[214]

Xudayê Jorî êkî bitinê ye di zatê xwe da û her dîsa Ew di hemî sifet û xasiyetêt xwe da jî êkî bitinê ye, belê Ew bi sifetêt xwe anku bi dîtin û guhlêbîna xwe bi ‘îlim û zanîna

212 Sûreta Ta ha 5
213 Sûreta Nehl 50
214 Fîqhul-Ebset

xwe li hemî cihu û ‘erda yê li gel ‘ebdêt xwe; yî hazir û nazir e; wan dibînît û haj wan hemyan heye.

Em Îlah û Rebbê xwe anku Ellah Te‘ala, bi nav û sîfetêt Wî; ewêt ku bo me ji tecelliya kar û sin‘etê Wî pêşçav û aşkira dibin diniyasin; ku ka Ew xaliqekî çendî mezin û pêve hatî ye, nê Wî bitinê ev kaînate; ev ‘alem û mexluqate hemî ji çûnehiyê yêt dayîn û peydakirin, hema her Ew bitinê xudan û semyanê hemî mexluqata ye, qet‘iyen jibilî Wî çu îlah û Rebbêt dî yêt heq; ku layiqî ‘îbadetî bin bo wan bête kirin nînin û nabin.

Ellahu Te‘ala, Ew ew Rebbe; Ew ê ku hemî xudan ruh û mexluqata bi ni‘metêt xwe xudan diket. Çunku Ew Rebbê hemî mexluqata; xelk û ‘alema ye, qet ji Wî pêvetir çu Xudayêt dî yêt heq nînin û nabin.

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ رَبَّكُمُ اللّٰهُ الَّذِي خَلَقَ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضَ فِي سِتَّةِ أَيَّامٍ ثُمَّ اسْتَوٰى عَلَى الْعَرْشِ يُغْشِي اللَّيْلَ النَّهَارَ يَطْلُبُهُ حَثِيثًا وَالشَّمْسَ وَالْقَمَرَ وَالنُّجُومَ مُسَخَّرَاتٍ بِأَمْرِهِ أَلَا لَهُ الْخَلْقُ وَالْأَمْرُ تَبَارَكَ اللّٰهُ رَبُّ الْعَالَمِينَ

“(Ey gelî mirovan!) Bê şik hema her Ew Ellah bitinê Rebbê hewe ye, Ew ê ku (her heft) ‘esman û ‘erd di şeş roja da (di şeş dema da) ji çûneyê xuliqandîn û çêkirîn, paşê Ew yê bilind biye ser ‘Erşî û rawestayî. Ew şevê bi ser rojê da tînît; ronahiya wê di bet û tarî diket (û rojê jî bi ser şevê da tînît taryatiya wê di bet û dinyayê pê rohn diket) û ew her du li tîrekê bi lez û bez her li dûv êkûdu digerhin; tîn û diçin. Roj, heyv û stêhir ew hemî her li ber emrê Wî dirawestayî ne. Hûn baş bizanin xuliqandin û çêkirin û emir hemî her yêt Ellahu Te‘ala bitinê ne, qencî

û çakiyêt Ellahu Te‘ala di bêhed û bêhisabin û her ew Rebbê hemî ‘alema ye."[215]

Di dînê Îslamê da, îman û bawewriya bi wan tiştêt nepenî; ewêt ku bi çava naêne dîtin gelek ya muhîme bo mirovêt îmandar û xudan bawerî, nê ne weye heçî tiştê ku mirov bi çavêt xwe nebînît ew nîne û ne yî mewcude nexêr, ev e wekî; îman û baweriya bi heyîna zatê Ellahu Te‘ala, bi ‘Erş û Kursiyêt Wî, bi Biheşt û Cehnemê, bi hewza kewserê, bi heyîna Ruhê, bi milyaketan û ecina, bi ‘ezab yan xweşiya di qebrî da, bi pira selewatê, bi teraziya xêr û şera; anku kêşan û pîvana ‘emela li roja qiyametê, bi qederê; ku ka Xudê Te‘ala çî li enya mirovî nivîsî ye, bi çavîn kirinê anku nezerê, bi heyîna mikroba û gelek tiştêt dî jî, îman û baweriya bi van tiştan hemyan ferz û wacib e li ser her Busulmanekî…

Xudê Te‘ala dibêjît:

أَفِي اللَّهِ شَكٌّ فَاطِرِ السَّمَاوَاتِ وَالأَرْضِ

"Ma hûn di derheqa heyîna Ellahu Te‘ala da bi şik û gumanin? Nê her Wî bitinê (her heft) ‘esman û ‘erd yêt xuliqandîn û çêkirîn."[216]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَهُوَ الَّذِي فِي السَّمَاءِ إِلَٰهٌ وَفِي الْأَرْضِ إِلَٰهٌ ۚ وَهُوَ الْحَكِيمُ الْعَلِيمُ

"Her ew e yê ku li ‘esmaî Îlah; layiqî ‘îbadetî û her dîsa li ‘erdî jî her Ew bitinê Îlahe layiqî ‘îbadet û ta‘etî ye (ku hema her bo Wî bitinê bête kirin). Her Ew yî xudan hîkmet e (di hemî kar û kirin û gotinêt xwe da) û Ew hemî tiştan jî bi timamî dizanît."[217]

215 Sureta E‘raf 54
216 Sûreta Îbrahîm 10
217 Sûreta Zuxruf 84

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَهُوَ اللّٰهُ فِي السَّماواتِ وَ فِي الْأَرْضِ يَعْلَمُ سِرَّكُمْ وَ جَهْرَكُمْ وَ يَعْلَمُ ما تَكْسِبُونَ

“(Bê şik) Her Ellahu Te‘ala bitinê Ellahê ‘esmana û ‘erdî ye. Ew hemî tiştêt hewe yêt nepenî û aşkira dizanît û Ew wan tiştan jî dizanît ewêt ku hûn bi destêt xwe bo xwe diken (anku wî ‘emelê hûn diken jî).”[218]

Xudê Te‘ala dibêjît:

اللّٰهُ خَالِقُ كُلِّ شَيْءٍ

“Her Ellahu Te‘ala bitinê, Xaliqê hemî tişta ye.”[219]

Xudê Te‘ala dibêjît:

اَلْحَمْدُ لِلّٰهِ رَبِّ الْعَالَمِينَ

“Medh û sena her bo Ellahu Te‘ala bin, Ew Rebbê hemî ‘alema ye (her Ew bitinê rizqê hemî mexlûqa didet).”[220]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَا إِلٰهَ إِلَّا هُوَ يُحْيِي وَيُمِيتُ ۖ رَبُّكُمْ وَرَبُّ آبَائِكُمُ الْأَوَّلِينَ

“Ji Wî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin, her Ew bitinê hemî xûdan ruha sax diket û dimirînît û Ew Rebbê hewe ye û Rebbê bab û kalêt hewe yêt berê ye jî.”[221]

218 Sûreta En‘am 3
219 Sûreta Zumer 62
220 Sûreta Fatihe 2
221 Sûreta Duxan 8

Xudê Te'ala dibêjît:

قُلْ أَغَيْرَ اللَّهِ أَبْغِي رَبًّا وَهُوَ رَبُّ كُلِّ شَيْءٍ

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: "Erê ma wijdane ez ji bilî Ellahu Te'ala bo xwe daxwaza Rebbekî dî bikem! Nê hema her Ew bitinê Rebbê hemî tişta ye?"[222]

Xudê Te'ala dibêjît:

اللَّهُ لَا إِلَٰهَ إِلَّا هُوَ الْحَيُّ الْقَيُّومُ ۚ لَا تَأْخُذُهُ سِنَةٌ وَلَا نَوْمٌ ۚ لَهُ مَا فِي السَّمَاوَاتِ وَمَا فِي الْأَرْضِ ۗ مَنْ ذَا الَّذِي يَشْفَعُ عِنْدَهُ إِلَّا بِإِذْنِهِ ۚ يَعْلَمُ مَا بَيْنَ أَيْدِيهِمْ وَمَا خَلْفَهُمْ ۖ وَلَا يُحِيطُونَ بِشَيْءٍ مِنْ عِلْمِهِ إِلَّا بِمَا شَاءَ ۚ وَسِعَ كُرْسِيُّهُ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضَ ۖ وَلَا يَئُودُهُ حِفْظُهُمَا ۚ وَهُوَ الْعَلِيُّ الْعَظِيمُ

"Ellahu Te'ala (Îlahekî bitinê ye), ji Wî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin. Ew yî sax e (û her dê yî sax jî bît) û her Ew bitinê debar û ragirê hemî 'alema ye, qet çu hînişk û xew bo Wî nîne û Wî nagirin. Hindî tiştêt di 'esmana da û hindî tiştêt di 'erdîda heyn ew hemî bi carekê her yêt Wî bitinê ne. Ma kî yî we heye berevanî û şefa'etê li nik Wî biket bêy destûra Wî? Ew wan tiştan hemyan ewêt ku 'ebdêt Wî kirîn û wan tiştan jî ewêt ku dê ji nûka jî ken hemyan bi timamî dizanît. Qet kesek çu tiştî ji 'îlm û zanîna Wî nuzanît, hema ew tişt têne yê ku Wî hezkirî û hezdiket (wekî mu'cîzêt pêxemberan silav li ser wan bin). Kursiya Wî (her heft) 'esman û 'erd yêt nav xwe da ragirtîn (anku her Ew bitinê xweyî û xudan û hukumdarê hemî mexlûqa ye). Parast in û ragirtina 'esmana û 'erdî qet li ber Wî ya giran nîne û lê giran naêt jî û her Ew yî bilind û mezin e."[223]

222 Sûreta En'am 164
223 Sûreta Beqere 255

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَذَٰلِكُمُ اللَّهُ رَبُّكُمُ الْحَقُّ ۖ فَمَاذَا بَعْدَ الْحَقِّ إِلَّا الضَّلَالُ ۖ فَأَنَّىٰ تُصْرَفُونَ

“Vêca hema her ew Ellahê heq bitinê Rebbê hewe ye. Erê, ma piştî heqiyê ji delaletê pêvetir çu tiştê dî heye?! Vêca ma çewa hûn rûyê xwe ji heqiyê ba diden û diguhorin gelo?!”[224]

Pêxemberî her di du‘ayêt xwe da hosa; du‘a û rîca dikir û digot: (Ey Xudayê min! Tu ewî; Ew ê ku çu tişt ji berî Te ney, Tu yî bêdûmahîkî; her û her dê mînî, qet piştî Te jî çu tişt namînît, Tu di ser hemî tiştan ra yî bilindî, qet çu tişt di ser Te ra nîne û nabît, rast e kes (di dinya yê da) Te nabînît, belê Tu yî agehdarî bi hemî tiştêt nepenî û veşartî, qet kesek bi ser heyîna zatê Te hilnebiye û hilnabît jî).[225]

Bo agehdarî ew kelîme, gotin û peyvêt dînî, ewêt ku bi ezmanê ‘erebî hatîne di nav ezmanê me da, ew xemil û ciwaniyeka gelek mezin in bo ezmanê me, divêt, ew hema her wesa bimînin, çunku heke em şûna wan me’na wan bêjîn û binivîsin; dê bêtam bin, çunku me‘na wan; ewa ku ew bo hatîne danadin bi durustî û timamî jê naête zanîn û fehmkirin, ev e bo nimûne her wekî van peyîv û gotina:

ELLAH, Reb, Qur’an, Wehî, Îman, Îslam, Îhsan, Dîn, Mu’min, Muslim, Tewhîd, ‘Eqîde, Cîhad, Şehîd, Hedîs, Tefsîr, Wasite,Tewessul, Muşrîk, Kafir, Munafiq, Mulhid, Zindîq, Fîqh, ‘Îbadet, Qible, Muezin, Îmam, Niyet, Qamet, Fatîhe, Tehiyat, Ruku‘, Sucde, Ferz, Wacib, Rukûn, Sunnet, Du’a, Tesbîhat, Zikr, Teqwa, Tube, Zûhd, Cenabet, Qiyamet,  Axret, Cima‘et‘ Cum‘e, Xutbe, We‘iz, Nesîhet, Mî‘rac, Remezan, Hec, ‘Umre, Zikat, Şahid, Selefî, Bîd‘e, Xewaric, Mutezîle, Eş‘erî, Maturîdî, Şirî‘et, Miftî, Fetwan,

224 Sûreta Yûnus 32
225 Muslim

Cîhad, Şura, Xelîfe, Murşid, Welî, Sedeqe, Nezir, Helal, Heram, Cennet, Cehnnem û gelekêt dî jî her wekî va. jixwe divêt, metnê Qur'ana Pîroz, Bang, Qamet û Kelîma şehdê ev e çû caran ne êne guhorîn, li nav çu qewim û mileta…

Belê bi êkcarî navê Xudayê Jorî yê mezin: anku ((ELLAH)) divêt, ew hema her wekî xwe bi 'erebî bimînît di nav ezmanê Kurdî da; nexasima di nav nivîsandina wan tefsîr û me'alêt Qur'anê da; ewêt ku bi ezmanê kurdî têne nivîsîn.

((ELLAH)) navê Wî zatiye yê ku heyîna Wî ya bêberahîk û bêdûmahîke; Ew ê ku fer û pêtivî ye mirov hema her guhê xwe bidene Wî bitinê; anku hemî new'êt 'îbadet û ta'etî hema her bo Wî bitinê biken.

Çî gava me navê Xudayê xwe înand anku li demê me got: ((ELLAH)) fer e em hema zû di dûvra bêjîn:

-Celle Celaluhu-: anku Xudayê xudanê mezinahiya mezin, yan bêjîn: 'Ezze We Celle, yan Xudayê Jorî yan jî bêjîn:

Xudayê mezin.

Navê Xudayê Jorî ((ELLAH)) serekê hemî navêt Wî yêt cuwan û law e û ew ji wan hemyan yî bi qedirtir û mezintir e.

Hejî gotiniye bêjîn ev navê Xudaê Jorî anku ((ELLAH)) duhizar û sêsed û şît cara (2360) di Qur'ana Pîroz da yê hatî.

Vêca heq ew e li demê em dibêjin: Xudê, wê gavê niyeta me hema her lefza navê Xudê Jorî; anku ((ELLAH)) bît.

Lazim û fer e li ser me hemyan ku em baş bi zanîn; ((ELLAH)) navekî xweser û taybetî ye bo zatê Xudê Te‘ala, ev nav e delaletê nakete ser navekî û sîfetekî aşkira û me‘neyeka mu‘eyen bitinê bo Xudê Te‘ala; belê, ev navê Xudayê Jorî anku ((ELLAHE)) delaletê dikete ser hemî nav û sîfetêt Xudê Te‘ala; ewêt ku ditekûz û timam û bêqusûrî, û ew wan hemyan bi carekê û bi timamî digirîte ber xwe û di nav xwe da vedhewînît û komdiket.

Ev navê Xudê Te‘ala anku ((ELLAH)) berî dînê Îslamê bêt di nav muşrîkan da jî hebû. Ev e her wekî Xudayê Jorî bi xwe zar muşrîkan dibêjît:

وَلَئِن سَأَلْتَهُم مَّنْ خَلَقَ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضَ لَيَقُولُنَّ اللَّهُ

“(Ey Muhemmed!) Bi sûnd, nê heke tu pisyarê ji wan muşrîkan bikey û bêjiye wa: “Gelo Kê (her heft) ‘esman û ‘erd xuliqandîne û çêkirîne?” Hema herhadirî ew muşrîk dê bêjin; “Ellahu Te‘ala yêt çêkirîn.”[226]

Nê hîngê Qureyşiya jî digote Pêxemberê me: Muhemmedê kurê ‘Ebdullhî-selat û selam li ser bin-.

Anku wan navê babê wî tîna û digotê: Kurê ‘Ebdullahî, anku kurê ‘Ebdê Xudê.

Xudê Te‘ala bi xwe ev navê ((ELLAH)) bo xwe yê hilbijartî û di Qur’anê da yê danadiye ser xwe.

Di ezmanêt dinya yê da; ewêt ku mirov pê taxivin,

Qet‘iyen çu nav, gotin û kelîmêt çu ezmanêt dinya yê; yêt çu qewim û milleta; ewêt ku mirov pê taxivin muradifî vî navê ((ELLAH)) nînin û me‘na Wî naden û cihê wî nagirin.

226 Sûreta Zumer 38

((ELLAH)) bi ezmanê ‘Erebî ye, ev navê Xudê Te‘ala anku ((ELLAH)) kite; teke du û koma wî di ezmanê ‘Erebî da nîne.

Ne durust e ev navê Xudê Te‘ala anku ((ELLAH)) bi çu ezmanêt dinya yê; ewêt ku mirov pê taxivin bête guhorîn yan tercûme kirin jî.

((ELLAH)) nave (îsime) delaletê dikete ser zatê Xudê Te‘ala bi xwe, belê sîfet û wesfêt Wî delaletê dikene ser me‘neyeka bi zatê Wî ve digirêdayî.

Vêca qet çu ji wan nava; ewêt ku xelk û ‘alemê bo Xudê Te‘ala danadîn û dibêjin wekî: Xuda, xwedê, xweda, xwedîker, perwerdegar, xudan, baxwê, malxwê, yezdan, Tanri û God cihê navê Xudê Te‘ala anku ((ELLAHÎ)) nagirn; çûnku ev nave hemî wesif û sîfetin cihê navî (îsmî) anku cihê gotina navê Xudayê Jorî ((ELLAHî)) qet nagirin.

Ji bilî Xudê Te‘ala qet hej berê da û heta nihe jî kesek bi vî navî; anku bi navê ((ELLAH)) ne bi rastî û ne bi mecazî ne hatiye nav kirin û ne durust e bête navkirin jî.

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَاعْبُدْهُ وَاصْطَبِرْ لِعِبَادَتِهِ هَلْ تَعْلَمُ لَهُ سَمِيًّا

“Her Ellahu Te‘ala ye, Rebbê ‘esmana û ‘erdî û hindî tiştêt di navbeyna wan jî da heyîn, (ey Muhemmed!) Vêca tu hema her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Wî bitinê bike û tu her yî micid û qayim be li ser kirna ‘îbadetî bo Wî bitinê. Erê, ma tu dizanî, kesekî dî ji bilî Xudê Te‘ala bi vînavê ((ELLAH)) hatiye navkirin heye? Nexêr.”[227]

227 Sûreta Meryem 65

Eve pirsyareka bi înkarî ye; anku qet kesek bi vî navî ne hatiye nav kirin û nîne.

Qet‘iyen ji çu la ve, ev nav û sîfetêt Xudê Te‘ala ne wekî yêt çu mexluqane û qet çu nav û sîfetêt mexluq û beşera jî ne wekî yêt Xudê Te‘ala ne.

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَيْسَ كَمِثْلِهِ شَيْءٌ

“Qet‘iyen çu tişte şitî Ellahu Te‘ala nîne û nabît jî.”[228]

Herdîsa Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَمْ يَكُنْ لَهُ كُفُوًا أَحَدٌ

“Qet çu hevkûf û bevl jî bo Wî nînin û nabin.”[229]

Vêca divêt, em hema her wan nav û sîfeta bitinê bo Xudê Te‘ala qebûl bikeyn û bêjîn; ewêt ku Wî bi xwe di Qur’ana pîroz da bo xwe gotîn yan jî ewêt ku Pêxemberê Wî bo wî gotîn.

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَوْ كَانَ فِيهِمَآ ءَالِهَةٌ إِلَّا ٱللَّهُ لَفَسَدَتَا ۚ فَسُبْحَٰنَ ٱللَّهِ رَبِّ ٱلْعَرْشِ عَمَّا يَصِفُونَ

“Nê heke ji bilî Ellahu Te‘ala hinde xudayêt dî, di ‘esmana û ‘erdî da hebane; ‘esman û ‘erd da bi serêk da ên û da xirab bin. Vêca her Ellahu Te‘ala ye Rebbê ‘Erşî, Ew yî pak û beri ye ji wan sifetêt kirêt; ewêt ku ew bo Wî dibêjin.”[230]

228 Sûreta Şûra 11
229 Sûreta Îxlas 5
230 Sûreta Enbiya 22

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمَا كَانَ مَعَهُ مِنْ إِلَٰهٍ ۚ إِذًا لَّذَهَبَ كُلُّ إِلَٰهٍ بِمَا خَلَقَ وَلَعَلَا بَعْضُهُمْ عَلَىٰ بَعْضٍ ۚ سُبْحَانَ اللَّهِ عَمَّا يَصِفُونَ

"Li gel Wî qet çu xudayêt dî nînin û nabin. Nê heke li gel Ellahu Te'ala hinde xudayêt dî hebane, hîngê hema her xudayek da berê xwe dete wan tiştan ewêt ku wî xuliqandîn û dayn û hindek ji wan da xwe li ser hindeka qude û bilind ragirin. Belê, Ellahu Te'ala ji wan fêhil û silaxeta ewêt ku ew muşrîk bo dibêjin û hejî Wî dibînin yî dûr û beriye."[231]

Îmamê Ehmedê kurê Henbel (Xudê jê razî bît) dibêjît:

(Divêt, em hema her wan sîfet û wesfa bitinê bo Xudê Te'ala bêjîn; ewêt ku Wî bi xwe bo xwe gotîn yan jî ewêt ku Pêxemberê wî bo Wî gotîn û hind.)

Xudê Te'ala dibêjît:

قُلْ أَأَنْتُمْ أَعْلَمُ أَمِ اللَّهُ

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: "Erê ma hûn çêtir dizanin yan jî Ellahu Te'ala?"[232]

Hemî nav û sîfetêt Xudê Te'ala di tewqîfîne; anku qet kesek neşêt bi aqilî xwe yan jî ji dev xwe nav û sîfetekî lê kêm û yan jî zêde biket.

Divêt, ev navê Xudê; anku ((ELLAH)) qet cucara ne ête guhorîn, çunku Ellah îsmê E'zeme, xaseten li demê ku heke mûm pêve bît wekî: Ellahûme:

231 Sûreta Mu'minun 91
232 Sûreta Beqer e 140

(اللَّهُمَّ)

Îbn ‘Abidîn (Xudê jê razî bît) di kitêba Duretul-Muxtar da dibêjît: Îmamê ebu Henîfe û Tehawî û gelek ‘alimêt dî jî (Xudê ji wan hemyan razî bît) dibêjin: Navê Xudê Te‘ala ((ELLAH)) îsmê E‘zeme. anku

Ebû Hureyire (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin-dibêjît: (Gotina ji hemî gotina rastir ya ku şa‘êra gotî; ev gotina Lebiydî ye: (Xwe hişyar biken baş bîzanin, hertiştê hey jibilî Ellah Te‘ala hemî dibatil û pûçin; dê zaêl bin û namînin).[233]

Tam ev hinde muwafiqî vê gotina Xudê Te‘ala ye demê ku Ew dibêjît:

كُلُّ مَنْ عَلَيْهَا فَانٍ وَيَبْقَى وَجْهُ رَبِّكَ ذُو الْجَلالِ وَالإِكْرَامِ

“Hindî tiştêt li ser rûyê ‘erdî heyn (ew xudan ruh hemî dê mirin), qet çu namînin; Belê, hema her wechê Rebbê te; Ew ê ku yî xudan mezinahî û keremdar bitinê heta heta dê mînît.”[234]

Ebû Hureyire (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Çî şola te avête dilê xwe ku tu bikey, heke tu jirê ve nebêjî: (Bîsmîllah) tu çu xêrê ji wê karî û şolî nabînî çûnku dê yî bêbereket bît).[235]

Ehmedê Xanî (Xudê jê raqzî bit) dibêjît:

Sername ê name namê ((ELLAH)), bê namê Wî name natemam e wellah

233 Muttefequn ‘eleyh
234 Sûreta Rehman 26
235 Ehmed, Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya ze‘îfe

Xudê Te‘ala gelek nav yêt heyîn, kesek bidurustî nuzanît ka hejmara wan çende, bi ezmanê ‘erebî dibêjine van navêt Allah Te‘ala: (el-Esmaul-Husna) anku; navêt ji hemî nava di lawtir û şirîntir.

((أَسْمَاءُ اللَّهِ الْحُسْنَى))

Ev esmaul-Husna hemî navêt Xudê Te‘ala ne.

Dibêjinê van navêt  Xudê Te‘ala, navêt husna çunku ev nav e hemî bi ser xudanê xwe ve ne; hemî ji hedî zêde di cuwan û lawin. Em îman û baweriyê bi wan nava hemyan tînîn; ewêt ku Xudê Te‘ala bi xwe bo xwe di Qur’ana Pîroz da gotîn yan jî Ewêt ku Pêxemberê wî bo Wî di hedîsêt rast da aşkira kirîn û gotîn, li ser wê me‘na layiqî zatê Wî ya ku ew delaletê dikene ser.

Herdîsa em îman û baweriyê bi wan wesf û sîfeta hemyan jî tînînEwêt ku xwe bi zatê Xudê Te‘ala ve digirin; ewêt ku qet çû caran jê venabin, ev e wekî: Nefis, ‘Îlm, Heyat, Qudret, Îradet, Sem‘, Beser, Kelam, Qidem, Melîk, ‘Ezemet, Kibriya, ‘İlwu, ‘Îzet, Xîna, Rehmet û Hîkmet…

Yan jî wekî van wesf û sîfetêt fê‘lî, evêt ku bi meşyet û qudreta Xudê Te‘ala ve digirêdayî; ewêt ku çî gava Ew hez biket Ew pê radibît û diket, wekî: Kelam, Îstîwa, Nuzûl, Hatin, Hêbet bînî, Kenî, Razî bînî, Hejêkirin, Neviyan, Nerazîbînî, Keyfxweşî, Xezeb, Mekir, Keyd û Nevyana dijwar (xedeb) û yan jî wekî van wesf û sîfetêt xeberî wekî: Wecih, çav, her du dest û pê û xeyrî wan jî...

Hinde sîfetêt Xudê Te‘ala bi du î‘tîbarane; hem zatî ne û hem jî fê‘lî ne; ev e wekî: Kelamê Wî, ew di ‘eslê xwe da sifetekî zatî ye, belê gava Xudê Te‘ala hezkir û viya baxivît, dê axivît, ev e hîngê ew dibîte sîfetekî fê‘lî jî bo Xudê Te‘ala...

Divêt, ev wesif û sîfete hema li ser fehim û têgehiştina Selefêt Salih (Ehlê Hedîsê) bi me‘neka layiqî zatê Xudê Te‘ala bêne îsbat kirin bo Xudê Te‘ala, bêyî ku bêne teşbîh kirin bi tiştekî ve yan bêne betalkirin, guhorîn bi me‘ne û lefzeka dî, yan jî bi keyfiyet û çewakiyekê bêne gotin.

Eve her wekî Îmamê Şafi‘iî -Xudê jê razî bît- dibêjît:

(Ez îman û baweriyî tînim bi Xudê Te‘ala û bi wî tiştî yê ku jinik Wî hatî; li ser meqseda Wî, Ez îman û baweriyî tînim bi Pêxemberê Xudê Te‘ala û bi wî tiştî jî yê ku jinik Pêxemberê Xudê Te‘ala hatî li ser meqseda Pêxemberê Xudê Te‘ala).[236]

236 Lem‘etul-Î‘tîqad, lî îbin Qudame

# NAVÊT XUDÊ TE‘ALA YÊT LAW Û JÊHATÎ

Divêt, ev navêt Xudê Te‘ala yêt law û jêhatî, anku ev nehwêt û neh (99) navêt he hemî hema her wekî xwe bi ezmanê ‘erebî bimînin û bêne nivîsîn, xwandin û gotin.

Xudê Te‘ala bi xwe bi van nav û sîfetêt xwe medh û senayêt xwe diket, û Ew gazî hemî ‘ebdêt xwe diket ku ew jî hema her bi van nav û sîfetêt Wî medh û senayêt Wî biken.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلِلَّهِ الْأَسْمَاءُ الْحُسْنَى فَادْعُوهُ بِهَا وَذَرُوا الَّذِينَ يُلْحِدُونَ فِي أَسْمَائِهِ سَيُجْزَوْنَ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ

“Navêt ji hemî nava di lawtir û şirîntir; (el-Esmau’l-husna) hema her yêt Ellahu Te‘ala ne. Vêca hûn hema her bi wan nava bo xwe hîvî û du‘a ji Ellahu Te‘ala biken û hûn ji wan bigerhin û wan bihêlin ewêt ku navêt Ellahu Te‘ala bi hinde me‘nêt dî diguhorin, paşê ew dê êne ceza kirin, ji ber wî tiştî yê ku wan kirî û diken.”[237]

Xudê Te‘ala dibêjîte me: Ey gelî Busulmana hûn hema her bo xwe bi van navêt min du‘a ji Min biken; anku hûn li berahîka du‘ayêt xwe hindeka ji van navêt Min bêjîn û paşê di dûvra bo xwe du‘a ji Min bitinê biken, bo nimûne: Tu sê cara bêje: Ya heyyu, ya Qeyyum, ya zulcelalî wellîkram, û di dûv ra bo xwe dest bidu‘a bike, belê sed heyf û mixabinî! Hindek li şûna ku bo xwe bi van navêt Xudê Te‘ala (el-Esmau’l-husna) du‘a ji Xudê Te‘ala biken, ew van navêt Xudê Te‘ala anku (el-Esmau’l-husna) dikene

237 Sûreta E‘raf180

niviştî bi xwe û ‘eyalê xwe vediken û hindek jî kopya van nava difiruşne xelk û ‘alemê bo xwe tucaretê pê diken!

Bi rastî hemî Navêt Xudê Te‘ala di law û jêhatî ne, çunku navêt Xudayê Jorî ne; ma vêca çewa ew di law û jêhatî nabin?

Belê divêt, bi zanîn ew hedîsa Welîdê kurê Muslimê Şamiyê Dîmeşq î ji Tirmizî neqilkirî; ewa ku nehwêt û neh (99) navêt Xudê Te‘ala tê da hatîn, ew hedîs ne ya durust e ; çunku gelek ji ‘alim û zana dibêjin:

Welîdê kurê Muslimî ew nav hema bi îctîhada xwe; wesa yêt dayine êk û rêzkirîn, rêzkirina wan nava; bi wî şiklî negotina Pêxemberiye-selat û selam li ser bin-.

Şeyxulîslam Îbin Teymiyê Herranî, Ibin Hezmî, Ibin el‘Erebî, Dawudî, Ibin Kesîrî û gelekêt dî jî (Xudayê Jorî ji wan hemyan razî bît) dibêjin: (Ev hedîs e ya mewzu‘e).

Îmam Ibin Qeyyîm el-Cuzî (Xudê jê razî bît) dibêjît:

Ev hejmar û rêzkirna he ya (el-Esmau’l-husna) ne ji gotina Pêxemberî ye-selat û selam li ser bin-.[238]

Qet çu hedîsêt rast nînin; ku navêt Xudê Te‘ala (el-Esmau’l-husna) nehwêt û neh (99) nav hemî pêk ve û li gelêk tê da hatibine komkirin.

Gotina ‘alim û zanayêt mezin hemyan êk e; li ser wê hindê ku navêt Xudê Te‘ala (el-Esmau’l-husna) di tewqîfîne; anku ka çewa ew di Qur’ana pîroz da û hedîsêt rast da hatîne, divêt, ‘eynen ew hema her wesa bêy kêm kirin û zêde kirin bêne wergirtin û qebûl kirin, çunku kesek neşêt bi aqilê xwe bi ser navêt Xudê Te‘ala (el-Esmau’l-husna) hilbît û bizanît, vêca çewa dê lê zêde û kêmken.

238 Ji mewqi‘ê Îslamwebê

Navêt Xudê Te‘ala yêt law û jêhatî (el-Esmau’l-husna) hejmara wan ji Xudê Te‘ala pêvetir qet kes dî nûzanît ka ew çendîn; navêt Xudê Te‘ala hindî hind gelek in, gelek ‘alim û zana li dûv riwayetêt cuda cuda hetta hejmara wan ya gehandiye dused û heştê (280) nava.

Pêxemberî -selat û selam li ser bin- di vê du‘a xwe da dibêjît:

اللَّهُمَّ إِنِّي عَبْدُكَ، ابْنُ عَبْدِكَ، ابْنُ أَمَتِكَ، نَاصِيَتِي بِيَدِكَ، مَاضٍ فِيَّ حُكْمُكَ، عَدْلٌ فِيَّ قَضَاؤُكَ، أَسْأَلُكَ بِكُلِّ اسْمٍ هُوَ لَكَ سَمَّيْتَ بِهِ نَفْسَكَ، أَوْ أَنْزَلْتَهُ فِي كِتَابِكَ، أَوْ عَلَّمْتَهُ أَحَدًا مِنْ خَلْقِكَ، أَوِ اسْتَأْثَرْتَ بِهِ فِي عِلْمِ الْغَيْبِ عِنْدَكَ، أَنْ تَجْعَلَ الْقُرْآنَ رَبِيعَ قَلْبِي، وَنُورَ صَدْرِي، وَجَلَاءَ حُزْنِي، وَذَهَابَ هَمِّي

“Ey Xudayê mîn! Ez ‘ebdê Te me. Ez ‘eyalê deyk û babêt xwe me; ewêt ku ‘ebdêt Te ne. Eniya min (emrê mîn) her yê didestê Te da. Hukmê Te di derheqî min da her yê bi cih e; ya Te bo min teqdîr kirî ‘edalet e. Ez bi hemî navêt Te; ewêt ku Te bi xwe, xwe pê nav kirî û danadîne ser xwe yan ewêt ku Te di kitêba xwe da (Qur’anê da) hinartîne xwarê. Yan jî Ewêt Te nîşa ‘ebdekî ji ‘ebdêt Xwe dayîn. Yan wan navêt Te ewêt ku Te li dev xwe di ‘îlmê xeybê da hêlayîn. Ez bi van navêt Te hemyan bo xwe du‘a û daxwazê ji Te dikem; ku Tu Qur’anê bikeye bihara dilê mîn, nûrha singê mîn, hemî xem, kul û kovanêt min pê verevîne; qet çuya nehêle.[239]

Di vê hedîsê da li demê Pêxember -selat û selam li ser bin- dibêjît: ((Yan ew navêt Te nîşa ‘ebdekî ji ‘ebdêt xwe dayîn yan jî wan navêt Te; ewêt ku Te hema li dev xwe di ‘îlmê xeybê da hêlayîn, ewêt ku kesek ji Te pêvetir

239 Zanayê mezin Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya sehîhe.

nuzanît)), ji vê hindê bo me aşkira dibît ku Xudê Te'ala, hinde navêt xwe hema bes yêt nîşa hindeka ji welî û 'ebdêt xwe dayin yan jî hinde navêt xwe hema li dev xwe bi xwe di 'îlmê xeybê da yêt hêlayîn, qet kesek ji mexluqatêt Wî pê neheshaye û biser hilnebiyne."

Ev hedîse bo me delîle li ser wê hindê ku navêt Xudê Te'ala ji nehwêt û neh (99) nava gelek û gelek di zêde tir û pitirin.

Belê yêt meşhur û navdar ji wan nehwêt û neh (99) navêt ji hemî navêt Wî di lawtir û şirîntir; (el-Esmau'l-husna), heştê û êk (81) ji wan navêt Xudê Te'ala yêt di Qur'ana Pîroz da hatîn û hejde jî (18) yêt hedîsêt pêxemberî yêt rast da hatîn.

Şêx Muhemmed Îbn 'Useymîn (Xudê jê razî bît) piştî lêkolîn û li dûvçuneka baş yê gehiştiye wê qena'etê ku nehwêt û neh (99) navêt Xudê Te'ala; anku (el-Esmau'l-husna), heştê û êk (81) ji wan navêt Xudê Te'ala yêt di Qur'ana Pîroz da hatîn û hejde jî (18) yêt hedîsêt pêxemberî da hatîn.[240]

Heştê û êk (81) navêt Xudê Te'ala; (el-Esmau'l-husna), ewêt ku di Qur'ana Pîroz da hatîn ew eve ne:

---

240 - Qewa'îdul-Musla Fî Sîfatîllahî We Esmaîhî el-Husna, ya Şêx Îbn 'Useymîn.

Hejî gotiiyr bêjîn: Şêx Îbn 'Useymîn ji van serîkehniya mefa yê wergirtî:

1- Îhsa Esmaullahî el-Husna Multeqa Ehlûl-Hedîs

2- Şerh îbn Qeyyim Lî Esmaullahî el-Husna

3- Esmaullahî el-Husna ya şêx Eş-Şe'rawî

4- Şerha Esmaullahî el-Husna fî Dewî el-Kîtabî we es-Sunne

5-Tefsîr Esmaullahî el-Husna ya şêx 'Ebdur-Rhman Es-S'dî

6- Esmaullahî el-Husna Me'anîha we Celalîha ya şêx 'Usman bin Muhemmed el-Xemîs

7- Mewsu'et Esmaullahî el-Husna, ya şêx Muhemmed Ratib en-Nablisî

**(( ELLAH ))**

**El-Ehed, El-E'la, El-Ekrem, El- Îlah, El-Ewwel, El-Axîr, Ez-Zahîr, El-Batin, El-Barî, El-Berr, El-Besîr, Et-Tewwab, El-Cebbar, El-Hafîz, El-Hesîb, El-Hefîz, El- Hefiyy, El-Heqq, El-Mubîn, El-Hekîm, El- Helîm, El-Hemîd, El-Heyy, El-Qeyyum, El-Xebîr, El-Xaliq, El-Xellaq, Er-Reuf, Er-Rehman, Er-Rahîm, Er-Rezzaq, Er-Reqîb, Es-Selam, Es-Semi', Eş-Şakîr, Eş-Şekur, Eş-Şehîd, Es-Semed, El-'Alîm, El-'Ezîz, El-'Ezim, El-'Efûw, El-'Elîm, El-'Elî, El-Xeffar, El-Xefûr, El-Xenî, El-Fettah, El-Qadîr, El-Qahîr, El-Quddûs, El-Qedîr, El-Qerîb, El-Qewî, El-Qehhar, El-Kebîr, El-Kerîm. El- Letîf, El-Mû'mîn, El-MûTe'alî, El-Mûtekebbîr, El-Metîn, El- Mûcîb, El-Mecîd, El-Mûhît, El-Musawwîr, El-Muqtedîr, El-Muqît, El-Melik, El-Melîk, El-Mewla, El-Muheymîn, En-Nesîr, El-Wahîd, El-Warîs, El-Wasî', El-Wedûd, El-Wekîl, El-Welî, El-Wehhab,**

Û hejde (18) jî ji wan navêt Xudê Te'ala ewêt law û jêhatî

(el-Esmau'l-husna), ewêt ku di hedîsêt Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yêt rast da hatîn ew jî eve ne:

**El-Cemîl, El- Cewad, El-Hekem, El- Heyî,**[241]

**Er-Rebb, Er-Refîq, Es-Sûbbuh, Es-Seyyîd, Eş-Şafî, Et-Teyyîb, El-Qabîd, El-Basit, El-Muqeddîm, El-Muexxîr, El-Muhsîn, El-Mu'tî, El-Mennan, El-Wîtir.**

Eve heke em heştê û êka li gel hejda kom bikeyn:

18 = 99) + (81 tam dê bine nehwêt û neh (99) nav.

Ebû Hureyire (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Bê şik, bo Xudê Te'ala nehwêt û neh (99) nav yêt heyn, seda (100) êk kêm, heçî

241 Ew e; yê ku gelek hej sitar e kirnê û şerim û heyayê diket.

kesê wan nava (îhsa) biket; anku heçî kesê wan nava jiber biket, di me‘na wan bigehît; baş fehim biket, bi îman û bawerî bo xwe du‘a pê ji Xudê Te‘ala biket, kar û ‘emelêt xwe li ber ronahiya wan rast û dûrust biket û xwe bispêrîte xudanê wan nava; ku Xudê Te‘ala ye, ew dê çîte Biheştê).[242]

Ev hedîse hema hinde ye, qet çu navêt Xudê Te‘ala nabêjît û tê da ne hatîne. Belê, ji ya geleka ve, ev e ew hedîsa Tirmizî ye; ewa ku Welîdê kurê Muslimê Şamiyê Dîmeşq î jê neqilkirî; ewa ku ev nehwêt û neh (99) navêt jêrî hosa tê da hatîn, nexêr; eve ne ew hedîse.

Eha eve metin û nessa wê hedîsa Tirmizî ye; ewa ku Welîdê kurê Muslimê Şamiyê Dîmeşq î jê neqilkirî, dê werin da em hemî pêk ve berê xwe bideynê, ka ew hedîs ya çewa ye û çî xeletî tê da heye, di wê hedîsê da Welîdê kurê Muslimê Şamî (el-Esmau’l-husna) bi vî reng û şiklê jêrî yêt rêzkirin û yêt gotîn:

الرحمنُ الرَّحيم المَلِك القدُّوسُ السَّلاَم المؤمِنُ المهَيمنُ العَزِيزُ
الجَبارُ المتكَبِّر الخالِق البارِيءُ المصَوِّرُ الغفارُ القَهَّارُ الوَهَّابُ الرَّزاق
الفتاح العَلِيم القَابِضُ الباسِط الخافضُ, الرَّافِعُ, المعز, المذِل, السَّمِيعُ
البصِيرُ الحَكَم, العَدل, اللطِيفُ الخَبيرُ الحَلِيم العَظِيم الغفُورُ الشكُورُ
العَلِيُّ الكَبيرُ الحَفِيظُ المقِيت الحَسِيبُ الجَليل الكَرِيم الرقِيبُ المجِيبُ
الوَاسِعُ الحكِيم الوَدُودُ المَجِيدُ, الباعِث, الشهِيدُ الحَق الوَكِيل القَوِيُّ
المَتِينُ الوَلِيُّ الحَمِيدُ, المحْصِي, المبدِيءُ, المعِيدُ, المحْيِي, المميت,
الحَيُّ القَيُّوم الوَاجِدُ, المَاجِدُ, الوَاحِدُ, الصَّمَدُ القَادِرُ المقتدِرُ المقَدِّم
المؤَخِّرُ الأَوَّل الآخِرُ الظاهِرُ الباطِنُ الوَالِي المتعالِي البرُّ التوَّابُ

242 Buxarî û Muslim

المنتقم, العَفُوُّ الرَّءُوف ,مَالِكُ الملكِ, ذُو الجلالِ وَالإِكْرَامِ, المقسِط,
الجَامِعُ, الغنِيُّ ,المغنِي, المَانِعُ, الضَّارُّ, النافِعُ ,النورُ, الهَادِي, البدِيعُ,
الباقِي, الوَارِث, الرَّشِيدُ, الصَّبُور.[٢٤٣]

الخافضُ, الرَّافِعُ ,المعز, المذِل , العَدل,الباعِث, ,المحْصِي, المبدِيءُ,
المعِيدُ, المحْيي, الممِيت ,المَاجِدُ, الوَاحِدُ ,المنتقم, ,مَالِكُ الملكِ,
ذُو الجلالِ وَالإِكْرَامِ, المقسِط ,الجَامِعُ, ,المغنِي, المَانِعُ, الضَّارُّ,
النافِعُ ,النورُ, الهَادِي, البدِيعُ, الباقِي, الرَّشِيدُ, الصَّبُور

El-Xafid, El-Rafi‘, El-Mu‘îz, El-Muzil, El-‘Edil, El-Ba‘is, El-Muhsî, El-Mubdî, El-Mu‘id, El-Muhyî, El-Mumît, El-Macîd, El-Wacîd, El-Munteqîm, El-Malik, Zulcelalî wel îkram, El-Muqsîd, El-Camî‘, El-Muxnî, El-Manî‘, Ed-Darr, El-Nafî‘, El-Nur, El-Hadî, El-Bedî‘,El-Baqî, Er-Reşîd,

Es-Sebur.

Ev bîst û heşt (28) navêt borîn, ewêt ku min bi ‘erebî û kurdî di nav vê çarçûvê da nivîsîn, ji nav wan navêt di vê hedîsa Welîdê kurê Muslimî da hatîn, ewêt ku me binêt wan xîç lê kirî ne navêt Xudê Te‘ala ne, belkî ew sîfetêt Xudê Te‘ala ne, qet çu hedîsêt rast û durust bi van bîst û heşt (28) nava ne hatîne û nînin; ku bêjin ev e navêt Xudê Te‘ala ne.

Çî Xudê qebûl diket, ev e hinde sal û zemane, bi vî şiklê ‘Erebî, yê ku me berî nihe nivîsî; ew ê di wê hedîsa Tirmizî da hatî; ewa ku Welîdê kurê Muslimê Şamiyê Dîmeşq î jê neqil kirî, ev esmau’l-husna hosa di nav ‘alema Îslamê da yêt hatîne belav kirin; heta xelk û ‘alemê bi vî şiklê yêt jiber kirîn û li ser lewha bi mal û dikanêt xwe ve yêt hilawîstîn…!

243 Tirmizi, berê xwe bide ze‘îfa cami‘ 1943

## ME‘NA NAVÊT XUDÊ TE‘ALA

Her wekî em hemî baş dizanîn, ruknê êkê û yê ‘ewilî ji binîşe û stûnêt dînê Îsalamê; îman û baweriya bi Xudê Te‘ala ye. Îman û baweriya bi Xudê Te‘ala vê hindê ji me dixwazît; ku em Xudayê xwe baş û bi durustî binyasîn; da ku her îman û baweriya me bi Wî ya qaîm û mukum bît, nê heke em fehim bikeyn û têbigehîn, hema her Xudê Te‘ala bi xwe -Celle Celaluhu-, bi navêt xwe yêt law û cuwan û bi sîfet û wesfêt xwe yêt mezin û bêhempa, xwe bi me didete niyasîn û her wesa Pêxemberê Wî jî-selat û selam li ser bin- Wî bi van nav û sîfetê Wî bi me didete niyasîn.

Nê heke em baş van navêt Wî yêt law û cuwan bi zanîn û fehim bikeyn, hîngê ‘ezamet û qudreta Wî dê baştir xwe li dilê me didet û ête pêşçavêt me; çûnku li ser her tiştekî di dinya yê da heyn, heke em bi wijdan; hûrik û bi me‘rîfet berê xwe bideynê, em dê muhra ‘ezamet û qudreta Wî li ser bînîn bi aşkirahî.

Eve jiber vê hindê me bi kurtî me‘na van navêt Xudê Te‘ala; ewêt ku di Qur’ana pîroz û hedîsêt Pêxemberî -selat û selam li ser bin-yêt durust da hatîn, yêt aşkira û rohn kirîn.

الله

1.**ELLAH**, navê Xudê Te‘ala; yê ewwil û pêşiyê ye, ev nave xweser yê zatê Ellah Te‘ala bitinê ye; qet kesekî dî bi vî navî nehatiye navkirin û nedurust e pê bête nav kirin jî, ev nave ji hemî navêt Wî mestir û mezintir e, ev nav e delaletê dikete ser zatê Xudê Te‘ala bi xwe, hemî nav, sîfet û wesfêt dî yêt Xudê Te‘ala tabi‘ê vî navê Wî yê mezinin ji hemî la ve.

ELLAH, ev navê şirîn; navê wî zatî ye yê ku bi heqî her Ew bitinê xudan Uluhiyyete; anku her Ew bitinê layiqî û hejî wê hindê ye ku hema her bi xuşû‘ û tederu‘, xalis û muxlîsane hemî new‘êt ‘îbadet û ta‘etî her bo Wî bitinê bêne kirin, û emr û nehyêt Wî bitinê bêne bi cih înan din; ‘emel pê bête kirin.

Berê xwe bidene vê ‘ecêbiyê û hinirê; vê Mu‘cîza navê Xudayê Jorî anku navê ((ELLAHî)); heke em herfa, herf herf û kit kite ji navê ((ELLAH)) vekeyn her îşaret bo navê ((ELLAH)) jê ête zanîn û fehmkirin, ev e heke em ji serê navê ((ELLAHÎ)) (elîfê) rakeyn dê bîte:( Lîllah), heke em (lama) ‘ewilî rakeyn dê bîte: (Lehu), heke em (lama) duwê jî rakeyn dê bîte: (Huwe), û huwe jî demîra navê Xudê Te‘ala ye.

الْأَحَد

2.El-Ehed: Ew e yê ku êk e û êkî bitinê ye û teke; serbi xwe ye.

الْأَعْلَى

3.El-E‘la: Ew e yê ku ji hemî tiştan bilindtir; berz û bala.

الْأَكْرَم

4.El-Ekrem: Ew e yê ku xudanê dan û keremêt bêhed û hisab; merdê ji hemî merda merdtir; hema bêy xwastin didet.

الْإِلَه

5.El-Îlah: Ew e yê ku layiq û hejî wê hindê ku hema her hemî new‘êt ‘îbadetî û ta‘etî bo wî bitinê bêne kirin.

الْأَوَّل

6.El-Ewwel: Ew e yê ku ‘ewilî û jirêve; qet çu tişt li berahîk û pêşiya Wî ney.

الْآخِر

7.El-Axîr: Ew e yê dûmahiyê; yê ku qet çu tişt piştî wî ney; dûmahiya kar û barêt hemî mexluqa her dizivirîte bal Wî ve.

الظَّاهِر

8.Ez-Zahîr: Ew e yê ku bi mexluq û çêkiriyêt xwe diyar û aşkira; yê ku çu tişt di ser wî ra ney.

الْبَاطِن

9.El-Batin: Ew e yê ku yî nepenî; ne yî pêşçav û ji wî wêdatir qet çu tişt ney.

الْبَارِئ

10.El-Barî: Ew e yê ku hemî tişt ji çûnehiyê dayîn û peydakirîn.

الْبَرّ

11.El-Berr: Ew e yê ku her û berdewam bi merdî çakî û qenciya li hemî ‘ebd û mexluqêt xwe diket.

الْبَصِير

12.El-Besîr: Ew e yê ku her hemî tiştan bi timamî dibînît, qet çu tişt li ber Wî di berze nînin û nabin

التَّوَّاب

13.Et-Tewwab: Ew e yê ku her bi viyaneka gelek mezin toba ‘ebdêt xwe yêt gunehkar qebûl diket.

الْجَبَّار

14.El-Cebbar: Ew e yê ku hemî tişt êxistîne di bin emrê xwe da û dilêt şikestî dicebirînît û saxdiket.

الْحَافِظ

15.El-Hafîz: Ew e yê ku ew hezbiket, Ew wî ji hemî bela, xirabiyan, ataf û tehlîka diparêzît, ew hemî kar û ‘emelêt ‘ebda bo roja qiyametê muhafize diket.

الْحَسِيب

16.El-Hesîb: Ew e yê ku ‘ebdêt xwe herekê li anegora wan kar û ‘emelêt wan kirîn xelat û celat diket.

الْحَفِيظ

17.El-Hefîz: Ew e yê ku mexluqêt xwe û hemî kar û ‘emelêt wan muhafize diket û dost û weliyêt xwe ji kirna guneh û xirabiyan diparêzît û sitare diket.

الْحَفِيّ

18.El-Hefiyy: Ew e yê ku xudanê zanîna kûr û hûrik û semyanê keyf xweş û bi misêbahî.

الْحَقّ

19.El-Heqq: Ew e yê ku heyîna wî ya heqe û her ew bi gotinêt xwe heqiyê bicihtînît û harîkariya welî û dostêt xwe diket.

الْمُبِين

20.El-Mubîn: Ew e yê ku her heqiyê û heqîqeta bo ‘ebdêt xwe rohn û aşkira diket; şik û gumanê ji nav dilêt wan radiket.

الْحَكِيم

21.El-Hekîm: Ew e yê ku yî xudan hikmet di tedbîr û rêvebirna hemî kar û barêt mexluqêt xwe da û yî kar binecih.

الْحَلِيم

22.El-Helîm: Ew e yê ku yî nerm û helîm; zû li ‘ebdêt xwe nagirît û muhletê didete gunehkara; da ku li xwe bizivirin û tobe biken.

الْحَمِيد

23.El-Hemîd: Ew e yê ku bi zatê xwe, bi nav û sîfetêt xwe û bi hemî kar û barêt xwe her musteheq û layiqî medh û sena.

الْحَيّ

24.El-Heyy: Ew e yê ku yî bêy berahîk û bêy dûmahîk; ezelî û ebedî her yî sax û nemir.

الْقَيُّوم

25.El-Qeyyum: Ew e yê ku bitedbîra kar û barêt hemî mexluqa radibît û pêktinît; xweragirtina hemî tiştan her bi Wî ye.

الْخَبِير

26.El-Xebîr: Ew e yê ku hemî tiştan bi timamî û jibinî dizanît; berî peydabîna wan û li gel egerêt peydabîna wan jî.

الْخَالِق

27.El-Xaliq: Ew e yê ku wî hemî tişt ji çu nehiyê xulqiyet kirîn û dayîn; înayne wucudê.

الْخَلاَّق

28.El-Xellaq: Ew e yê ku ka wî çewa divêt, û hez diket, ew wesa gelek tiştan li gelêk û pêk ve; her di wê gavê da didet û tînîte meydanê.

الرَّءُوف

29.Er-Reuf: Ew e yê ku gelek bi dilpêvehî û her bi rehm û misêbahî li gel hemî ‘ebd û mexluqêt xwe.

الرَّحْمَن

30.Er-Rehman: Ew e yê ku xudanê rehma ‘am û giştî; bêferq û cudahî, ew di dinyayê da rehmê bi hemî mexluqêt xwe dibet.

الرَّحِيم

31.Er-Rehîm: Ew e yê ku gelek bi rehim; rehma wî ya bêhed û bêhisab bo ‘ebdêt wî yêt îmandar li roja qiyametê.

الرَّزَّاق

32.Er-Rezzaq: Ew e yê ku rizqî hemî ‘ebd û mexluqêt xwe didet û teqdîr diket û rêka biser hilbîna rizqî bo wan bi sanahî têxît.

الرَّقِيب

33.Er-Reqîb: Ew e yê ku yî çavdêr li ser hemî tiştan; qet çu tişt li ber venêrîna Wî diberze nînin û nabin.

السَّلام

34.Es-Selam: Ew e yê ku yî pak û bi silamet ji hemî kêm û kasiyan û her ew e yê ku silametî û êmnahîyê didet.

السَّمِيع

35.Es-Semi‘: Ew e yê ku guh li hemî deng û pêjiniya dibît; çî di ‘erd û ‘esmana da diqewimît Wî haj hemyan heye û dibihîsît.

الشّاكِر

36.Eş-Şakîr: Ew e yê ku gelek şukra ‘ebdêt xwe yêt qencîker diket; yê ku xelatêt mezin didete wan hemberî kar û ‘emelêt wan yêt kêm.

الشَّكُور

37.Eş-Şekur: Ew e yê ku gelek şukra ‘ebdêt xwe diket; ‘emelê wan yê kêm û pîçek bi gelekê ji wan werdigirît û qebûl diket.

الشَّهِيد

38.Eş-Şehîd: Ew e yê ku bi zanîn û ditina xwe agehdar bi wan tiştan hemyan; ewêt ku di ‘erd û ‘esmana da di qewimin û rûy diden.

الصَّمَد

39.Es-Semed: Ew e yê ku her kes û hemî tişt her muhtacî wî bitinê û qet Ew bi xwe ne muhtacî kesekê û çu tiştan ye.

الْعَالِم

40.El-‘Alîm: Ew e yê ku hemî tiştêt nepenî û pêşçav bi timamî dizanît, qet‘iyen di ‘erd û ‘esmana da xwe hindî misqale zereyekê li ber wî berze nîne û nabît; hindî tiştêt heyîn û ewêt ku dê ji nûka jî peyda bin Ew wan hemyan bi durustî û timamî dizanît.

الْعَزِيز

41.El-‘Ezîz: ew e yê ku xudan quwwet; her xalib û serketî; qet kesek neşête Wî û çu tişt li ber wî di asê nînin û nabin.

الْعَظِيم

42.El-‘Ezim: Ew e yê ku ew bi xwe; bi sîfet û wesfêt xwe herî mezin; qet çu berahîk û dûmahîk bo mezinahiya Wî ney.

الْعَفُوُّ

43.El-‘Efûw: Ew e yê ku li ‘ebdêt xwe diborît û gunehêt wan ‘efu diket; ew ji cizadana wan pitir hej ‘efukirna wan diket.

الْعَلِيم

44.El-‘Elîm: Ew e yê ku hindî tiştêt di ‘erd û ‘esmana da heyn, wan hemyan bi timamî dizanît; qet çu tişt li ber wî diberze nînin û nabin.

الْعَلِيّ

45.El-‘Elî: Ew e yê ku xudan qedr û siyanet; bala û bilind diser hemî mexluqa ra; Ew ê ku di dinya yê da bi çava naête dîtin.

الْغَفَّار

46.El-Xeffar: Ew e yê ku gunehêt ‘ebdêt xwe ‘efudiket; çenda ku gunehêt wan dizêde û gelek jî bin.

الْغَفُور

47.El-Xefûr: Ew e yê ku her Ew bitinê ‘ebdêt xwe ji serdaçûn û gunehêt mezin ‘efudiket, di dinya û axretê da ‘êbêt wan vedşêrît û sitare diket.

الْغَنِيّ

48.El-Xenî: Ew e yê ku yî bêminet; xudanê hemî tiştan, qet wî muhtacî bi kesekê û çu tiştan nîne û nabît.

الْفَتَّاح

49.El-Fettah: Ew e yê ku ji kerema xwe dergehêt xizîne û rehma xwe bo ‘ebdêt xwe vekirîn û vediket, her Ew bitinê xudanê kilîlkêt ‘erd û ‘esmana û zanîna xeybê ye.

الْقَادِر

50.El-Qadîr: Ew e yê ku xudan qudret; hêl û şiyan li ser kirna heçî tiştê Wî bivêt û hezbiket.

الْقَاهِر

51.El-Qahîr: Ew e yê ku bi ‘ezamet û mezinahiya xwe her xalib û serketî di ser hemî mexluqêt xwe ra.

الْقُدُّوس

52.El-Quddûs: Ew e yê ku yî munnezeh; pak û berî ji hemî ‘êba, kêmasî û qusûriya.

الْقَدِير

53.El-Qedîr: Ew e yê ku bi hêl û şiyana xwe ya tekûz hemî mexluq xulqiyet kirîn û bi hikmet û qudreta xwe kar û barêt wan hemyan teqdîr diket.

القَرِيب

54.El-Qerîb: Ew e yê ku bi zanîn û dîtina xwe nêzîkî hemî mexluqêt xwe û bo qebûlkirna du‘a; nêzîkî wan kesa ewêt ku bo xwe du‘a jê diken.

الْقَوِيّ

55.El-Qewî: Ew e yê ku xudanê hêz û quwweta ji hemî hêz û quwweta mezintir; yê ku herî xalib û serketî; yê ku çu hêz û quwwet neşên çû caran xwe li ber hêz û quwweta wî ragirin.

الْقَهَّار

56.El-Qehhar: Ew e yê ku bi hêl û şiyana xwe dişête wan zalim û zordara; ewêt ku li hemberî Wî radibin wan dişkênît û dikete ‘îbret û qet çu mexluq û kesek ji wê mirna Wî bo wan teqdîr kirî xilas nabît.

الْكَبِير

57.El-Kebîr: Ew e yê ku xudan kibriya û mezinahî; di zat, nav û sîfetêt xwe da, mezinê ji hemî mezina mezintir her ew e;.

الْكَرِيم

58.El-Kerîm: Ew e yê ku yî merd; ji kerema xwe bêy xwastin û bedelk didet û dana Wî her ya berdewame jî.

اللَّطِيف

59.El-Letîf: Ew e yê ku hemî tiştêt nepenî û hûr û mûr hemyan bitimamî dizanît û yî nerm û helîme li gel ‘ebdêt xwe.

الْمُؤْمِن

60.El-Mû’mîn: Ew e yê ku êmnahî êxistî ye di dilêt ‘ebdêt xwe da ku qet ew çu zilmê li wan naket û Ew bawerdiket ku ‘ebdêt wî yêt îmandar di îmana xwe da di rast û durust in.

الْمُتَعَال

61.El-Mûte‘al: Ew e yê ku bi sîfet û wesfêt xwe her yî bilind di ser hemî mexluqa ra; qet Ew wekî kesek û çu tiştan nîne.

الْمُتَكَبِّر

62.El-Mûtekebbîr: Ew e yê ku her di ser hemî tiştan ra xudan tekebur; bala û mezinahî; qet naşupîte kesekê û çu tiştan.

الْمَتِين

63.El-Metîn: Ew e yê ku xudanê hêz û quwweta tûnd û dijwar; Ew ê ku bêwestan herî xalib û serketî.

الْمُجِيب

64.El-Mûcîb: Ew e yê ku her du'ayêt wan kesa qebûldiket; ewêt ku bo xwe du'a jê diken û zû di hawara wan diçît.

الْمَجِيد

65.El-Mecîd: Ew e yê ku xudan mezinahî; bi qedir û siyanet, her Ew hejî medh û sena ye û her Ew yî serketî ye.

الْمُحِيط

66.El-Mûhît: Ew e yê ku bi qudret û zanîna xwe hemî tişt êxistîne di bin hukmê xwe da; qet kesek û çu tişt ji ber Wî xilas nabin.

الْمُصَوِّر

67.El-Musewwîr: Ew e yê ku bi wî reng û rûbarê yê ku Wî hezkirî mexluqêt xwe dayîn û didet; her êk bi wî şiklî û rengî yê ku ew pê jêk têne cuda kirîn.

الْمُقْتَدِر

68.**El-Muq’tedîr**: Ew e yê ku xudan şiyan û qudret; her tiştê Ew bixwazît û hezbiket bêwasîte Ew peyda diket û tînîte meydanê.

الْمُقِيت

69.El-Muqît: Ew e yê ku qût û rizqê hemî mexluq û giyanew era hazir û amade diket; qet çu ji wan ji bîr nekirîne û ji bîr jî naket.

الْمَلِك

70.El-Melik; Her Ew bitinê xudanê hemî mexluqata ye; Wî çewa bivêt Ew bi şiyan û qudreta xwe wesa teserufê di wan hemyan da diket, desthilatdarî li ser hemî mexluqa her ya Wî bitinê ye, bêy ku êk bibîte mani‘ û nehêlît.

الْمَلِيك

71.El-Melîk; Ew e yê ku bi timamî; ezelî û ebedî xudanê hemî mexluqata, Wî hema her çewa bivêt, Ew wesa teserufê di wan hemyan da diket, hukumdarî û mezinahî her ya Wî bitinê ye di dinya û axretê da.

الْمَوْلَى

72.El-Mewla: Ew e yê ku biviyan berevaniyê ji ‘ebdêt xwe yêt îmandar diket; her wan diparêzît û harîkariya wan diket.

الْمُهَيْمِن

73.El-Muheymîn: Ew e yê ku bitimamî hemî kar û barêt ‘ebdêt xwe yêt nepenî û aşkira teqdîr diket; hemî tişt her diberzeftî Wî bitinê ne.

النَّصِير

74.En-Nesîr: Ew e yê ku her dem harîkarî û piştevanîya îmandaran diket; li hemberî dujmin û neyarêt wan.

الْوَاحِد

75.El-Wahîd: Ew êkî bitinê ye; teke û yî bê şirîk û bêheval e.

الْوَارِث

76.El-Warîs: Ew e yê mîratgir; ku piştî mirin û nemana hemî mexluqa her û her; ebedî dimînît, her ew bitinê ye waris û miratgirê ‘erd û ‘esmana û hindî tiştêt di nav wan da heyn.

الْوَاسِع

77.El-Wasî‘: Ew e yê ku sîfet û wesfêt Wî û ew kar û barêt bi wan ve digirêdayî we diberfirehin ku qet kesek neşêt bi timamî medh û senayêt wî biket; li hemberî ‘ezamet, mezinahî, rehim, dan û keremêt Wî.

الْوَدُود

78.El-Wedûd: Ew e yê ku bi hejêkirin û viyaneka gelek mezin hej ‘ebdêt xwe yêt teqwadar û salih diket û ew jî her gelek û her dem hej Wî diken.

الْوَكِيل

79.El-Wekîl: Ew e yê ku bi tedbîr hemî kar û barêt ‘ebdêt xwe birêve dibet; rêk û egerêt jîn û jiyarê bo wan peyda diket û bi sanahî têxît.

الْوَلِي

80.El-Welî: Ew e yê ku nêzîkî ‘ebdêt xwe yêt îmandar û her di hawara wan diçît, bi viyan harikarî û piştevaniya wan diket; kar û barêt wan birêve dibet.

الْوَهَّاب

81.El-Wehhab: Ew e yê ku bi dan û keremêt xwe her gav gelek çakî û qenciyêt bêhejmar her li ‘êbdêt xwe hemyan diket bêbedel.

الْجَمِيل

82.El-Cemîl: Ew e yê ku bêhed û hisab yî cuwan û law di zatê xwe da û bi navêt xwe, xudanê sîfet û wesfêt kemîlî, yî kar binecih; bêkêmasî û qusûrî.

الْجَوَاد

83.El-Cewad: Ew e yê ku gelekî merd; dan û keremêt xwe bêxwestin hema her bi ser ‘ebdêt xwe da dibarînît.

الْحَكَم

84.El-Hekem: Ew e yê ku bi ‘edalet û heqî hukmî di navbeyna ‘ebdêt xwe da diket û qet kesek neşêt hukmê wî red biket.

الْحَيِيّ

85.El-Heyî: Ew e yê ku gelek hej sitare kirnê û şerim û heyayê diket.

الرَّبّ

86.Er-Rebb: Ew e yê ku xweyî û xudanê hemî xudan ruh û giyanew era; wan hemyan binî‘metêt xwe xudan diket, kar û barêt wan birêve dibet, saxkirin û mirna wan hemyan her ya didestê Wî bitinê da.

الرَّفِيق

87.Er-Refîq: Ew e yê ku gelek bi şefqet û dil pêvehî; nerm û helîm, bi rehim û merhemet li gel hemî ‘ebd û mexluqêt xwe.

السُّبُّوح

88.Es-Sûbbuh: Ew e yê ku yî pîroz û mubarek; pak û berî ji hemî kêm û kasiyan; ji şirîk û her tiştê ne yî layiqî mezinahiya Wî.

السَّيِّد

89.Es-Seyyîd: Ew e yê ku bi sîfet û wesfêt mezinahî û serweriya xwe her yî hukumdare li ser hemî ‘ebdêt xwe.

الشَّافِي

90.Eş-Şafî: Ew e yê ku nisaxa sax diket; çêbîn û şîfa ji hemî êş, elema û sax kirna dila ji qirêja hemî tiştêt bi şubbhe û guneh her bi Wî ye.

الطَّيِّب

91.Et-Teyyîb: Ew e yê ku yî paqij; yî dûr û berî ji hemî ‘êb û kêmasiyan, tiştêt paqij hemî her ji Wî ne û layiqî wî ne.

الْقَابِض

92.El-Qabîd: *ew e yê* ku rizqî bi qetlazî û bertengî didete hindeka ji mexluqêt xwe, ruha distînît û nahêlît ‘esman bi ser ‘erdî da bête xwarê.

الْبَاسِط

93.**El-Basît**: Ew *e yê* ku bi merdîniya xwe; bêbexîlî rizqî, ‘îlm û zanînê bi zêdehî û bi berfirehî ve didete hindeka ji ‘ebdêt xwe.

الْمُقَدِّم

94.El-Muqeddîm: Ew *e yê* ku bi hikmeta xwe demê peydabîna hinde kar û bara diguhorît; pêş êkûdu têxît û hinde kesa bi sertêxît û tînîte pêş, her *ew yî* bi keyfa xwe *ye*; Wî çî bivêt Ew we diket.

الْمُؤَخِّر

95.El-Muexxîr: Ew *e yê* ku bi hikmeta xwe demê hatina hinde kar û bara paş têxît û vedhêlît û hinde kesa dişkênît û bêrûy diket, her *ew yî* bi keyfa xwe *ye*; Wî çî bivêt Ew we diket.

الْمُحسِن

96.El-Muhsîn: Ew *e yê* ku *yî* keremdar û qencîker; merdê merda *ye*, û Ew gelek hej qencî, çakiyê û merdîniyê diket.

الْمُعْطِي

97.El-Mu‘tî: Ew *e yê* ku bi berfirehî dergehê nî‘metêt xwe li ber ‘ebdêt xwe vedket; hêl û şiyan daye wan ku

herêk anegora pêve hatina xwe bo xwe û bi sanahî berhev biket; çî nî‘metêt hebin ew hemî bi timamî ji teref Wî ne; dan û kerema Wî ne.

الْمَنَّان

98.El-Mennan: Ew e yê ku bi kerem û danêt xwe; bi qencî û çakiyêt xwe gelek minnet li ‘ebdêt xwe kirî û diket.

الْوِتْر

99.El-Wîtir: Ew e yê ku êkî bitinê ye, yî bê şirîk û heval e; qet kesekî wekî Wî nîne û nabît.

Ya aşkira ye bi zanîn û fehimkirna nav û sîfetêt Xudê Te‘ala îmana mirovî zêde û kamil dibît.

Zanîn û fehimkirna nav û sîfetêt Xudayê Jorî, karekî hindî bêjî yî muhim û pêtivî ye bo îmandarî; çunku ev hinde egere bo heyîna Tewhîdê di nav jîn û jiyara Busulmanî da.

Nê mirov bi zanîna Tewhîdê anku bi zanîn û têgehiştina nav û sîfet û wesfêt Xudayê Jorî; heyîn û mezinahiya Wî ku Ew êkî bitinê ye, yî bêşirîk û bêheval e û ji hemî kêmasiyan yî dûr û beriye baştir diniyasît û nasdiket.

Vêca divêt, bizanîn ku kirin û fê‘lêt Xudayê Jorî ji sîfetêt Wî peyda û sadir dibin; sîfetêt Wî delaletê dikene li ser navêt Wî û bi navêt Wî ve diqaîm girêdayîne, ew jî her wekî navêt Wî yêt pîroz di ezelî û ebedîne û di pak û paqijin ji hemî kêmasî û qusûriya.

Divêt, ev îsim/nav û sîfetêt Xudayê Jorî hemî bêne qebûlkirin, ne durust e ku ev îsim/nav û sîfetêt Xudayê Jorî bêne te’wîlkirin, înkarkirin û qet bi çu tiştan jî divêt ne êne teşbîhkirin û qet çû caran pisyar ji çewatiya wan jî ne

ête kirin, divêt, hema ka çewa ew hejî û layiqî mezinahiya zatê Xudayê Jorî ne; ku ew nav û wesifêt heqîqîne bo Xudayê Jorî, ew hema herwesa bêne qebûlkirin û pejirandin her wekî hatîn.

Ev nav û wesfêt law û cuwan Bo Xudayê bilind û bala yêt heyîn, ew hema her hejî û layiqî mezinahiya zatê Wî ne. Ev nav, sîfet û xasiyetêt Xudayê Jorî, qet'iyen ji çu la ve ne wekî yêt çu beşera nînin, Xudayê Jorî yî pak û munezzehe ji hemî kêmasiyan; qet Ew ne wekî çu beşer û mexluqa ye û qet çu beşer û mexluq jî wekî Wî nînin û nabin her ji çu lave.

Îmamê Ebu Henîfe (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Qet çênabît kesek ji dev xwe û bêdelîl di derheqa zatê Xudê Te'ala da baxivît, belê hema divêt, ka çewa Xudê Te'ala bi xwe û Pêxemberê Wî behsê wesfêt zatê Wî kiriye, 'eynen divêt, em jî hema wesa jê xeber bideyn û bêjîn, qet çênabît kesek di derheqa Xudê Te'ala ku ew Rebbê hemî 'alema ye tiştekî bi aqil û re'ya xwe bêjît).[244]

Pêtivî ye li ser me ku em nav, sîfet û wesfêt Xudayê Jorî; ewêt dilaw û cuwan, ewêt ku di Qurana pîroz û hedîsêt Pêxemberî yêt rast da warid bîn û hatîn, em wan hemyan ka çewa ew hatîne aşkira kirin 'eynen hema wesa qebûl bikeyn û bipejirînin, çunku nav û sîfetêt Xudayê Jorî ditewqîfîne; anku ka çewa ew di Qurana pîroz û hedîsêt Pêxemberî yêt rast da ward bîne û hatîne; divêt, bêy lê zêde kirin û jê kêmkirin hema wesa em qebûl bikeyn û bipejirînin.

Nê Qur'ana Pîroz û hedîsêt rast, em baş bi nav, sîfet û wesfêt Xudayê Jorî ewêt ku di cuwan û law yêt agehdar kirin; anku bo me baş yêt rohin û aşkira kirîn.

244 Şerha 'eqîda Tehawî tehqîqa D. Et-Turkî

Belê sed heyf û mixabinî! Evro ke gelek ji Busulmana di nav Tewhîdê da; nexasima di nav qismê nav û sîfetêt Xudayê Jorî da, di aloz û nezanin; têgehin û baş fehim naken, belê ew bo dinya xwe hindî bêjî dihosta û şareza ne jî!

Xudê Te'ala dibêjît:

يَعْلَمُونَ ظَاهِرًا مِّنَ الْحَيَاةِ الدُّنْيَا وَهُمْ عَنِ الْآخِرَةِ هُمْ غَافِلُونَ

"Ew hema ji jîn û jiyara dinyayê wî tiştê serve serve û pêşçav bitinê dizanin, belê wan haj jîn û jiyara axretê nîne û ew çu jê nuzanin û di korefehmin!"[245]

Ebu el-Qasim et-Temîmî el-Esbehanî (Xudê jê razî bît) diderheqa pêtivî û zanîna Esmaullahî el-Husna da dibêjît; hinde 'alim û zana dibêjin: (Ferza jirê ve Xudê Te'ala ferzkirî li ser 'ebdêt xwe: Niyasîna zatê Wî ye, nê gava 'ebda Xudayê xwe niyasî, (hîngê mezinahiya Wî dê xwe li dilê wan det) ew dê ji dil û bi rast î û durustî 'îbadetî bo Wî ken. Nê ev e xudayê Jorî bi xwe dibêjît:

فَاعْلَمْ أَنَّهُ لَا إِلَٰهَ إِلَّا اللَّهُ

"Baş bizanîn ji Xudayê Jorî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin (ku layiqî guhdan û 'îbadetî bin; bo bête kirin)."[246]

Vêca pêtivî ye bo Busulmana ku ew Esmaullahî el-Husna baş bizanin û me'na wan jî, da ew bizanin ka Xudayê Jorî çend layiqî mezinkirnê ye; ew hind Wî mezin ragirin û biken.[247]

245 Sûreta Rûm 7
246 Sûreta Muhemmed 19
247 Ji kitêba Rewdetul-ina fî ed-Du'a bi Esmaullahî el-Husna

Hesenê Besrî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Wellahî hindek ji mirovan yêt heyn, ew bo dinya xwe we dihosta û şareza ne; ew derhemê (parê asin) dane ser nînuka xwe, ew dişên bêjine te ka senga wî çende, belê pa ew nuzanin nivêjan bi rast î û durust î biken.[248]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَلَا تَضْرِبُواْ لِلَّهِ ٱلْأَمْثَالَ

“Ey gelî mirovan! Vêca hûn bo Ellahu Te‘ala (di zat û sîfetêt Wî da) çu hevkûf û hevala çêneken.”[249]

Hîndî tiştêt di ‘erdî û ‘esmanda heyn, qet ew hemî ji çu lave na şuphine Xudayî Jorî; Ew yî bêhempa û hevkûfe.

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَيْسَ كَمِثْلِهِ شَيْءٌ

“Qet çu tişt û kesek şitî Ellahu Te‘ala nîne û nabît.”[250]

Mirov bizanîn nav, sîfet û wesfêt Xudayê Jorî dişêt Tewhîdê bi her sê ne‘wêt wê ve baş bizanît û fehim biket anku Tewhîda Uluhiyetê, Tewhîda Rububiyetê û Tewhîda nav û sîfetêt

Xudayê Jorî.

Nê ev her sê ne‘wêt Tewhîdê esas û binîşêt serekene bo heyîna îman û baweriyê.

Fer e em, baş bizanîn ‘Îlim û zanîna ji hemî ‘Îlim û zanîna bi xêrtir û baştir ku fer e mirov bizanît; ‘Îlim û

248 Ji tefsîra Ibin kesîr
249 Sûreta Nehl 74
250 Sûreta Şura 11

zanîna ‘eqîdê û fiqhî ye. Çunku Tewhîd; ‘eqîde egere bo wê hindê ku mirov Rebbê xwe bi nav û xasiyetêt Wî yêt law û cuwan ve baş binyasît, jixwe zanîna fîqih jî harîkariya mirovî diket ku mirov her bi rast î û durustî ‘îbadet û ta‘etî bo Xudayê xwe biket.

Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî:

Xudê Te‘ala xêra kê bivêt dê wî di dînî da şareza û zana ket.[251]

251 Buxarî , Muslim

# TEWHÎD: ÊKATİYA XÛDÊ TE'ALA

Tewhîd anku wehdaniyeta Xûdê Te'ala; ku ew di zat, sîfet û kirnêt xwe da bi Uluhiyyet, Rubûbiyet û Nav û sîfetêt xwe êkî bitinê ye; Tewhîd ruha dînê Îslamê ye; esl û kukê îman û baweriyê ye,

Xudê Te'ala dibêjît:

هَـٰذَا بَلاَغٌ لِّلنَّاسِ وَلِيُنذَرُواْ بِهِ وَلِيَعْلَمُواْ أَنَّمَا هُوَ إِلَـٰهٌ وَاحِدٌ وَلِيَذَّكَّرَ أُوْلُواْ الأَلْبَابِ

"(Ey Muhemmed!) Ev Qur'ana Me, bo te hinartî gazyeke bo hemî mirovan (divêt, hemî pê biheshin) û bo wan bête gotin; da ku ew pê bêne tirsandin û hişyar kirin û da ew bizanin ku bê şik Ellahu Te'ala, Îlahekî bitinê ye û da aqildarêt xudan hiş û bîr hizrêt xwe biken û bîne bîra xwe û pê bêne rayê."[252]

Tewhîd gazî; de'we û doza hemî pêxemberane -selat û selamêt Xudayê Jorî li ser wan hemyan bin-, Tewhîd kilîlka dînê Îslamê ye, Tewhîd 'ewil tişte yê ku mirov pê Busulman dibît û tiştê dumahîkê ye jî, yê ku Busulman pê ji vê dinya yê jî diçît, ye'nî ew wacibê berahîk û dûmahîkê ye.

Her wekî em hemî dizanîn sunnete li demê bûçûk tête dinyayê, li roja heftê bang di guhî wî yê rastê da bête dan.

Heçî kesê li ser Tewhîdê bimrît bi rast î ev e ew li ser kakilk û binîşa dînê Îslamê mir, bi aneha Xudayê Jorî ew dê çîte Biheştê û dê bi serferazî gehîte rizamendiya Xudayê Jorî di Biheştê da.

---

252 Sûreta Îbrahîm 52

Pêxember-selat û selam li ser bin- dibêjît:

Hûn li dev miryê xwe anku yê li ber sekeratê bêjin:

“La îlahe îllellah”.[253]

Herdîsa li ser vê hindê Pêxemberî-selat û selam li ser bin- dibêjît:

“Heçî kesekê (berî mirinê) gotina wî ya dûmahîkê (ji vê dinya yê): “La îlahe îllellah” bît ew dê çîte beheştê.”[254]

Pêxemberê me Muhemmedî -selat û selam li ser bin- piştî biye Pêxember, wî di hemî jiyana xwe da her gazî xelk û ‘alemê dikir; ku ew bên îman û baweriyê bi Êkatiya Xûdê Te‘ala bînin; anku hemî new‘êt ‘îbadetî her bo Wî bitinê biken û xwe ji hemî new‘êt şîrkê dûr ragirin.

Wî ser xatira kelîma Tewhîdê jî bi sihabiyêt xwe ve (Xudê ji wan hemyan razî bît) gelek sala xeza û cîhad ya li gel gawira; dûjminêt dînê Îslamê ya kirî, bêhed û hisab ser xatira vê kelîma Tewhîdê sihabî yêt şehîd bîn.

Tewhîd ne hema gotineka rep û rût bitinê ye; lazim û pêtivî ye mirov baş me‘na wê bizanît û fehim biket û anegora wê xwe; hemî gotin û kar û ‘emelêt xwe rast û durust biket.

Ellahu Te‘ala dibêjît:

قُلْ أَعُوذُ بِرَبِّ النَّاسِ مَلِكِ النَّاسِ إِلَهِ النَّاسِ مِنْ شَرِّ الْوَسْوَاسِ الْخَنَّاسِ

“(Ey Muhemmed!) Tu, bêje: “Ez bo xwe hîvî û du‘a ji Rebbê hemî mirovan, Ji serwer, xweyî û xudanê hemî mirovan, ji Îllahê hemî mirovan dikem; ku Ew min biparêzît û

253 Muslim

254 Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît; Ev hedîs e ya sehîh e

sitare biket ji şer û xirabiyêt wî şeytanî; Ew ê ku demê navê Ellahu Te‘ala tête gotin paş da direvît û xwe berze diket."[255]

Ellahu Te‘ala dibêjît:

قُلْ أَغَيْرَ اللَّهِ أَبْغِي رَبًّا وَهُوَ رَبُّ كُلِّ شَيْءٍ ۚ

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: "Erê ma wijdane ez ji bilî Ellahu Te‘ala bo xwe daxwaza Rebbekî dî bikem! Nê hema her Ew bitinê Rebbê hemî tişta ye?"[256]

Hîndî pêxemberêt Xudê Te‘ala hinartîn de‘we û gaziya wan hemyan her eve bû; anku herekê ji wan digote qewmê xwe dê werin ‘îbadetî bo Ellahu Te‘ala bitinê biken, nê ji Wî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq bo hewe nînin û nabin.

Ellahu Te‘ala dibêjît:

يَٰقَوْمِ ٱعْبُدُواْ ٱللَّهَ مَا لَكُم مِّنْ إِلَٰهٍ غَيْرُهُۥ

"Hûn hema her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Ellahu Te‘ala bitinê biken, ji Wî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq bo hewe nînin û nabin jî."[257]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ إِنَّمَا أَنَا بَشَرٌ مِّثْلُكُمْ يُوحَىٰ إِلَيَّ أَنَّمَا إِلَٰهُكُمْ إِلَٰهٌ وَاحِدٌ

"(Ey Muhemmed!) Tu, bêje wa: "Bê şik ez jî hema her wekî hewe mirovek im, belê bi wehiyê bo min ya hatî ku Îlahê hewe; me’budêhewe Îlahekî bitinê ye."[258]

---

255 Sûreta Nas 4
256 Sûreta En‘am 164
257 Sûreta E‘raf 59
258 Sûreta Sad 65

Xudê Te'ala dibêjît:

قُلْ إِنَّمَا أَنَا مُنْذِرٌ ۖ وَمَا مِنْ إِلٰهٍ إِلَّا اللَّهُ الْوَاحِدُ الْقَهَّارُ

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje: "Ez hema tirstêder û hişyarker im, ji Ellahu Te'ala pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin, hema her Ew bi timamî yî hukumdare li ser hemî tiştan."[259]

Xudê Te'ala dibêjît:

فَإِلٰهُكُمْ إِلٰهٌ وَاحِدٌ فَلَهُ أَسْلِمُوا ۗ وَبَشِّرِ الْمُخْبِتِينَ

"(Ey gelî mirovan!) Vêca Îlahê hewe (anku Xudayê hewe) hemyan her îlahekî bitinê ye. Vêca hûn hemî bi durustî her teslîmî emrê Wî bibin. (Ey Muhemmed!) Tu mizgîniyê bide wan; ewêt ku her ji dil xwe bo Ellahu Te'ala dişkênin."[260]

Xudê Te'ala dibêjît:

قُلْ هُوَ اللَّهُ أَحَدٌ اللَّهُ الصَّمَدُ لَمْ يَلِدْ وَلَمْ يُولَدْ وَلَمْ يَكُنْ لَهُ كُفُوًا أَحَدٌ

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje: "Ellahu Te'ala êkî bitinê ye, yî bê şirêk û bêheval e." "Ellahu Te'ala yî Semede (anku hemî tişt muhtacî wî ne, qet Wî muhtacî bi çu tiştan û kesekê nîne)." "Qet kesek ji Wî nebiye (Ew ne babê kesekê ye) û Ew bi xwe jî ji kesekê nebiye (Wî çu deyik û bab jî nînin)." "Qet çu hevkûf û bevl jî bo Wî nînin û nabin."[261]

259 Sûreta Hec 34
260 Sûreta Îxlas 4
261 Sûreta Meryem 88- 95

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَقَالُوا اتَّخَذَ الرَّحْمَنُ وَلَدًا لَقَدْ جِئْتُمْ شَيْئًا إِدًّا تَكَادُ السَّمَاوَاتُ يَتَفَطَّرْنَ مِنْهُ وَتَنْشَقُّ الْأَرْضُ وَتَخِرُّ الْجِبَالُ هَدًّا أَنْ دَعَوْا لِلرَّحْمَنِ وَلَدًا وَمَا يَنْبَغِي لِلرَّحْمَنِ أَنْ يَتَّخِذَ وَلَدًا إِنْ كُلُّ مَنْ فِي السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ إِلَّا آتِي الرَّحْمَنِ عَبْدًا لَقَدْ أَحْصَاهُمْ وَعَدَّهُمْ عَدًّا وَكُلُّهُمْ آتِيهِ يَوْمَ الْقِيَامَةِ فَرْدًا

“Wan kafiran got: “Xudayê Rehman bo xwe biçûkek yê ragirtî û peyda kirî (haşa).” Bi sûnd, ey gelî yêt ku hûn we dibêjin! hewe tiştekî nedi rê da û gelekî kirêt got, Hema kêm mabû ku (her heft) ‘esman ji ber wê gotina wan biderizin, ‘erd şeq şeq bît û çiya jî bi serêk da gur bibin û bêne xwarê! Çûnkî hewe bo Xudayê Rehman biçûk rewa dîtin! Qet layiq û hejî Xudayê Rehman nîne û nabît ku ew biçûkekî bo xwe ragirît û peyda ket. Hindî ewêt ku di ‘esmanan da û di ‘erdîda heyn ew hemî bi carekê bi ‘ebdînî dê îne huzûra Xudayê Rehman.

Bi sûnd, Xudayê Rehman ew hemî êk êk e yêt hisab kirîn û hejmartin. Roja qiyametê ew hemî kit kite û bitinê dê êne huzûra Ellahu Te‘ala û ber destê Wî.”[262]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلِ الْحَمْدُ لِلَّهِ الَّذِي لَمْ يَتَّخِذْ وَلَدًا وَلَم يَكُن لَّهُ شَرِيكٌ فِي الْمُلْكِ وَلَمْ يَكُن لَّهُ وَلِيٌّ مِّنَ الذُّلَّ وَكَبِّرْهُ تَكْبِيرًا

“(Ey Muhemmed!) Tu, bêje: “Medh û sena hema her bo wî Ellahî bin, Ew ê ku bo xwe çu biçûk negirtîn û peyda nekirîn û herdîsa tu bêje medh û sena her bo Wî bin;

262 Sûreta Meryem 88-95

Ew ê ku yî bêheval û şirîk di hukumdariya xwe da, qet çû caran Ew jar û bêçare nebiye û nabît jî; ku muhtacî harîkar û piştevana bibît û tu hema her navê Wî mezin û bilind ragire û bêje."[263]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَقَالَ اللّٰهُ لاَ تَتَّخِذُواْ إِلَهَيْنِ اثْنَيْنِ إِنَّمَا هُوَ إِلَهٌ وَاحِدٌ فَإِيَّايَ فَارْهَبُونِ

"Ellahu Te'ala dibêjît: "Hûn bo xwe du xudêya li gelêk negirin. Bê şik Ellahu Te'ala, Îlahekî bitinê ye. Vêca hûn hema her ji Min bitinê bitirsin; (bê-emriya Min neken)."[264]

Xudê Te'ala dibêjît:

أَأَرْبَابٌ مُّتَفَرِّقُونَ خَيْرٌ أَمِ اللّٰهُ الْوَاحِدُ الْقَهَّارُ

"(…(Paşê Yûsufî gote hevalêt xwe yêt zîndanê): Ey gelî hevalêt min yêt hefs û zîndanê!) Erê, ma xudayêt cuda cuda çêtir in, yan jî hema ew Ellahê ku êkî bitinê ye; Ew ê ku yî hukumdare li ser hemî tiştan û hemî tişt her yêt di emrê Wî bitinê da?"[265]

Xudê Te'ala dibêjît:

لَوْ كَانَ فِيهِمَا آلِهَةٌ إِلَّا اللّٰهُ لَفَسَدَتَا ۚ فَسُبْحَانَ اللّٰهِ رَبِّ الْعَرْشِ عَمَّا يَصِفُونَ

"Nê heke ji bilî Ellahu Te'ala hinde xudayêt dî di 'esmanan û 'erdî da hebane, 'esman û 'erd da bi serêk da ên û da xirab bin. Vêca hema her Ellahu Te'ala bitinê Rebbê 'Erşî ye, Ew yî pak û beri ye ji wan wesf û sifeta ewêt ku ew bo Wî dibêjin."[266]

263 Sûreta Îsra 111
264 Sûreta Nehl 51
265 Sûreta Yûsuf 39
266 Sûreta Enbiya 22

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُل لَّوْ كَانَ مَعَهُ آلِهَةٌ كَمَا يَقُولُونَ إِذًا لاَّبْتَغَوْا إِلَى ذِي الْعَرْشِ سَبِيلاً

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje: “Heke li gel Ellahu Te‘ala hinde xudayêt dî hebane, her wekî ku ew kafir dibêjin, hîngê ew da bizavê ken û da xwe bi rêkekê gehîne xudanê ‘Erşî, (haşa ew da xwe li cihê Wî kene xuda, belê nehedê wa ye).”[267]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا خَلَقْتُ الْجِنَّ وَالْإِنسَ إِلَّا لِيَعْبُدُونِ

“Min ecine û mirov yêt dayîn û xuliqadîn da ku ew hema her bes Min bitinê binyasin; ku Ez êkî bitinê me.”[268]

Li demê Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin- Mu‘azê kurê Cebelî (Xudê jê razî bît) birê kiriye welatê Yemenê gotê: (Tu dê çiye nav qewmekî ji Ehlûl-kîtaba, vêca tu jirêve gazî wan bike, bila ew bên li dev te şehde biden û bêjin: (Eşhedu ella îlahe îlallah we eşhedu enne Muhemmeder-resûlullah), û di rîwayeteka dî da.[269]

dibêjît: Tu gazî wan bike û bo wan bêje: (Da ku ew baş bizanîn ku Xudê Te‘ala êkî bitinê ye).

‘Ewil tiştê pêtivî û lazim li ser her Busulmanekî ku ji dînê xwe bizanît; têgehiştin û fehimkirna Tewhîdê ye anku êkatî; Tewhîda Xudê Te‘ala ye.

Zanîna (Fîqhê îman û baweriyê) Tewhîdê wacibê jirêve ye li ser her ‘ebdekî; anku fer e li ser her Busulmanekî mukelef; ku ew xwe bi‘elimînîte Tewhîdê;

267 Sûreta Îsra 42
268 Sûreta Zariyat 56
269 Buxarî

bi têgehiştin û fehimkirin û her pê ‘emel biket; da ku ew nebîte kelexek li ber pêt nêcîrvanêt şirkê û bîd‘etciyan, jixwe Busulmanetiya kesekê ya durust nîne û nabît jî heta ku Tewhîd muheqeq nebît li dev wan û heta ew xwe ji wan tiştan jî; ewêt ku bi zidê Tewhîdê; anku heta ew xwe ji şîrkê û eger û esbabêt wê jî dûr û berî neket, ew nabîne mu’min; îmandar.

Qur’ana Pîroz behsê Dehriya diket; ewêt ku înkara Xûdayê Jorî dikir û diken, ew hemî qewimîn û rûdana bi dehrî ve anku bi zemanî ve girêdiden, qet ew xwe di wê hindê nagehîn û bawernaken ku peydabîna hemî kar û bara hema her bi hezkirin û îrada Xudê Te‘ala bitinê ye!

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَقَالُوا مَا هِيَ إِلَّا حَيَاتُنَا الدُّنْيَا نَمُوتُ وَنَحْيَا وَمَا يُهْلِكُنَا إِلَّا الدَّهْرُ ۚ وَمَا لَهُمْ بِذَٰلِكَ مِنْ عِلْمٍ ۖ إِنْ هُمْ إِلَّا يَظُنُّونَ

“Dehri dibêjin: “Ji bilî vê jîn û jiyara me ya ku em di dinyayê da dimirin û dijîn pêvetir qet çu jîn û jiyarêt dî nînin û nabin, nê hema borîna zemanî me dihîlak dibet. Belê, wan bi wê gotinê qet çu ‘îlm û zanîn nîne. Ew hema bi hizir û xiyalêt xwe, we dixapînin!”[270]

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- dibêjît: Xudayê Jorî di hedîseka qudsî da dibêjît: “Benî adem wan gotina dibêjît yêt ku min pê nexweş; te dît wan got: Wey feleka xaîn, nê Ez im xaliqê felekê; emir û fermana hemî tiştan her ya destê Min bitinê da, her Ez bitinê şev û roja tînim û dibem û lêk diguhorim.[271]

270 Sûreta Casiye 24
271 Buxarî

‘Eynen Qomunîst jî bi hemî çeqêt xwe ve; ew jî wekî Dehriya înkara Xûdayê Jorî diken, ew jî dibêjin: Xuda nîne, jîn û jiyar hema saxiya berdewame heta hetayê. Dîn ‘afyona mileta ye, anku milet bi dînî xirab û pûç dibin…

Bi devê wan bît, ew dibêjin: Em hema îman û baweriyê bi gotinêt van her sê kesa bitinê tînîn: Markisî, Lînînî û Sitalinî. Û her dîsa ew dibêjin: Em van her sê tiştan jî redd û înkar dikeyn û qet qebûl nakeyn: Dînî, Xudê û xudaniya tiştan (mulkiyeta) xweser û taybetî.

Di ola û baweriya Zerdeştiyêt Mecusî û agirperest da du xudê yêt heyn ew dibêjinê: <u>Ehûramazda</u>

xudayê nûrhê, xêrê û başiya ne û <u>Ehrîman</u> xudayê taryatiyê, şerî û xirabiyê ye.

Cuhî dibêjin: Uzeyr kurê Xudêye (haşa) û File jî dibêjin: Îsa kurê Xudê ye û senem perêsa: Qureyşiya jî digot: Milyaket kiçêt Xudê Te‘ala ne (haşa).

File dibêjin: Ellahu Te‘ala ji siyan yê sê ye; anku ji bab, kur û ruhul-qudûs zatê Xudê pêk têt û her sê pêk ve dibine Xudê (haşa).

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَّقَدْ كَفَرَ الَّذِينَ قَالُوا إِنَّ اللَّهَ ثَالِثُ ثَلَاثَةٍ وَمَا مِنْ إِلَٰهٍ إِلَّا إِلَٰهٌ وَاحِدٌ وَإِن لَّمْ يَنتَهُوا عَمَّا يَقُولُونَ لَيَمَسَّنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا مِنْهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ

“Muheqeq û bi sûnd, ew yêt kafir bûn; ewêt gotî û dibêjin: “Ellahu Te‘ala ji siyan yê sê ye.” Qet ji Ellahu Te‘ala pêvetir çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin, Ew her êkî bitinê ye. Heke ew ji wê lê venebin ya ku ew dibêjin,

bi sûnd, ‘ezabeka gelek biêş û jan dê ête serê wan, ewêt ku ji wan bi wê baweriyê kafir bûn.”[272]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَقَالَتِ الْيَهُودُ عُزَيْرٌ ابْنُ اللَّهِ وَقَالَتِ النَّصَارَى الْمَسِيحُ ابْنُ اللَّهِ ۖ ذَٰلِكَ قَوْلُهُم بِأَفْوَاهِهِمْ ۖ يُضَاهِئُونَ قَوْلَ الَّذِينَ كَفَرُوا مِن قَبْلُ ۚ قَاتَلَهُمُ اللَّهُ ۚ أَنَّىٰ يُؤْفَكُونَ

“Cûhya got: ‘Uzeyr kurê Ellahu Te‘ala ye, “haşa” û Fila jî got” ‘Îsa kurê Ellahu Te‘ala ye, haşa.” Eha ev e, gotina wa ye û ew yê bi devê xwe wê dibêjin. Ev e, ew yê zehrî gotina wan vedken; ewêt ku li berî wan kafir bûn, erê ma çewa ew berê xwe ji heqiyê Werdigêrin? Ellahu Te‘ala wan bikujît! ”[273]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَيَجْعَلُونَ لِلَّهِ الْبَنَاتِ سُبْحَانَهُ وَلَهُم مَّا يَشْتَهُونَ

“Wan (anku Qureyşiyêt kafir) kiç bo Ellahu Te‘ala didanan û hisab dikirin! Ellahu Te‘ala ji wê hindê yî pak û beri ye û wan ew tişt yê ku dilê wan dixwazît (anku wan kur bo xwe didanan û) hisab dikirin.”[274]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَجَعَلُوا لِلَّهِ شُرَكَاءَ الْجِنَّ وَخَلَقَهُمْ ۖ وَخَرَقُوا لَهُ بَنِينَ وَبَنَاتٍ بِغَيْرِ عِلْمٍ ۚ سُبْحَانَهُ وَتَعَالَىٰ عَمَّا يَصِفُونَ

“Wan muşrîkan ew ecine bo Ellahu Te‘ala dikirne hevkûf û şirîk; ewêt ku Ellahu Te‘ala xuliqandîn û dayn

272 Sûreta Maîde 73
273 Sûreta Tewbe 30
274 Sûreta Nehl 57

û wan ji bêbextî û ji nezanîna xwe (digot: Ellahu Te'ala) hinde kur û kiç bo xwe yêt peyda kirîn. Haşa. Ellahu Te'ala yî pak û bilind e ji wan wesfa; ewêt ku ew ji bêbextî dibêjin."[275]

Belê di bîr û baweriya dînê Îslamê da; ku dînê Tewhîdê ye, ev e her wekî ev her du ayetêt jêrî dibêjin: Ew Îlahekî bitinê ye yî bê şirîk û heval e.

Xudê Te'ala dibêjît:

وَإِلَـهُكُمْ إِلَهٌ وَاحِدٌ لاَّ إِلَهَ إِلاَّ هُوَ الرَّحْمَنُ الرَّحِيمُ

"(Ey gelî mirovan!) Îlahê hewe hemyan her Îlahekî bitinê ye, ji Wî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin, Ew Rehman e (anku Ew di dinyayê da) rehmê bi hemî mexlûqêt xwe dibet û ew gelekî birehm û merhemet e jî."[276]

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنَّ إِلَهَكُمْ لَوَاحِدٌ رَبُّ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا وَرَبُّ الْمَشَارِقِ

"Bê şik Îlahê hewe her îlahekî bitinê ye. Ew Rebbê 'esmanan û 'erdî û hindî tiştêt di navbeyna wan da ye û Rebbê wan cih û 'erdaye jî; ewêt ku roj lê dihiltêt û avadibît."[277]

Ferz û lazim e li ser hemî Busulmanêt îmandar ku ew ji dil îman û baweriyê bi êkatî; Tewhîda Xudayê Jorî bînin û bi timamî û ji hemî la ve ew teslîmî Wî bibin; emir û fermanêt Wî bi viyan bicih bînin û her stuwê xwe li ber mezinahiya Wî xwahir biken.

---

275 Sûreta En'am 100
276 Sûreta Beqer e 163
277 Sûreta Safat 4

Tewhîd, eve ye, tu ji dil û bi îman û bawerî; bawer bikey ku Xudayê Jorî êkî bitinê ye; yî bê şirîk û yî bêheval e, qet Wî muhtacî bi kesekê û çu tiştan nîne û nabît, Ew yî saxe, bêberahîk û bêdûmahîk jî her dê mînît û Ew yî mewcûd e û Ew bi dîtin, guhlê binî û zanîn xwe li hemî cih û ‘erda yî hazir û nazire û Ew yî zana û agahdar e bi hemî tiştan.

Wî hemî kaînat; ‘erd û asîman yêt xulqiyet kirin ji çûnehiyê. Her Ew e yê ku hemî ruhteber û giyanewera saxdiket û dimirînît û her Ew bitinê kefîlê rizqê wan hemî mexluqa ye hetta roja qiyametê. Ew di kaînatê de bi keyfa xwe ye; ka Wî çewa divêt, Ew wesa teserufê tê da diket; çûnku kaînat hemî mulkê Wî bitinê ye.

Ew yî xudan hêl û şiyane li ser kirina hemî tiştan. Her Ew bitinê Xudayê heqe, her Ew bitinê yî layiq e; ku hemî ne‘wêt ‘îbatetî her bo Wî bitinê bêne kirin û her hemî mirov guhê xwe bidene emr û fermanêt Wî bitinê. Her Ew e îlahê bitinê û me‘bûdê heq; wacib e li ser hemî ‘ebda ku ew hema her hemî ne‘wêt ‘ibadet û ta‘etî yêt nepenî û pêşçav bo Wî bitinê biken.

Divêt, em hema her Xudayê Jorî bitinê bo xwe Îlah û Rebb qebûl bikeyn; da ku Busulmanetî û îmana me ya rast û durust bît.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَهُوَ الَّذِي فِي السَّمَاءِ إِلَٰهٌ وَفِي الْأَرْضِ إِلَٰهٌ ۚ وَهُوَ الْحَكِيمُ الْعَلِيمُ

“Her Ellahu Te‘ala bitinê îlahe li ‘esmanan û her dîsa her Ew bitinê îlahe li ‘erdî jî (anku hema her Ew bitinê layiqî ‘îbadet û medh û sena ye). Ew yî xudan hîkmet e (di hemî kar û kirin û gotinêt xwe da) û Ew hemî tiştan jî bi timamî dizanît.”[278]

278 Sûreta Zuxrûf 84

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا أَرْسَلْنَا مِنْ قَبْلِكَ مِنْ رَسُولٍ إِلَّا نُوحِي إِلَيْهِ أَنَّهُ لَا إِلَهَ إِلَّا أَنَا فَاعْبُدُونِ

“(Ey Muhemmed!) Hindî pêxemberêt Me, berî te hinartîn, îleh Me wehî bo wan hemyan ya hinartî û Me yê gotiye wa: “Bê şik ji Min pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin, vêca hema hûn her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Min bitinê biken.”[279]

‘Abdullahê kurê ‘Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît: Li demê “Pêxemberî-selat û selam li ser bin-

Mûaz (Xudê jê razî bît) hinartiye welatê Yemenê gotê: Ev e bê şik tu dê çiye nav qewmekî ew ehlê kîtabêne, vêca te êmanet, tu jirê ve bêje wan; werin hûn hema her ‘îbadetî bo Xudê Te‘ala bitinê biken.[280]

Herdîsa di rîwayeteka dî jî da, ji Buxarî ya hatî, dibêjît: Pêxemberî -selat û selam li ser bin- gote Muazî (Xudê jê razî bît): Vêca te êmanet, tu jirê ve bêje wan; hûn werin da bo hewe bêjim: Hûn baş bizanîn; Xudê Te‘ala êkî bitinê ye, ji Wî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin; (ku mirov ‘îbadetî bo biket û guhê xwe bidete emr û nehyêt wî)

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِنَّ اللَّهَ رَبِّي وَرَبُّكُمْ فَاعْبُدُوهُ ۚ هَٰذَا صِرَاطٌ مُّسْتَقِيمٌ

“Bê şik Ellahu Te‘ala, Rebbê min û Rebbê hewe ye, vêca hûn hema her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Wî bitinê biken. Eha her eve ye, rêka heq û rast.”[281]

279 Sûreta Enbiya 25
280 Buxarî
281 Sûreta Alî ‘Îmran 51

Welhasil, divêt, baş bizanîn; li ser rûyê ‘erdî û di ‘esmanan da, di dinya û axretê da jî, jibilî Xudê Te‘ala qet‘iyen çu xudayêt dî yêt heq; ku durust bît ‘îbadet û ta‘et bo bête kirin; bêne peristin û hebandin nînin û nabin, hema her Xudê Te‘ala bitinê îlahe; îlahekî heqe her yî saxe û dê her yî sax bît jî (heyyê la yemûte), yî bêzewale, yî bê şirîk û bêheval e, her Ew bitinê hakim û hukumdare di mulk û melekutêt xwe da li dinya û axretê, divêt, hemî new‘êt ‘îbadetî, ta‘etî û ‘ubudiyet, medh û sena, hema her bo Wî bêtinê bêne kirin û gotin.

Vêca wacib e her wextekî mejyê me bi viyan û muhebeta Wî bitinê ve yî mijûl û girêdayî bît û ji dil guhdariya ferman û nehyêt Wî bikeyn, her di nav xwe da ‘emel bi kelamê Wî anku Qur’ana Pîroz û hedîsêt Pêxemberê Wî yêt durust bikeyn, da ku rast, bît belê em jî Busulman în û ummeta Pêxemberê Wî Muhemmedî ne-Sallallahu eleyhîm we sellem-.

# NEW‘ÊT TEWHÎDÊ

3-Sê new‘ û qismêt Tewhîdê yêt heyn:

1-Tewhîda Rubûbiyetê; anku Xudayinî yê, eve ye; ku mirov bi îman û bawerî bizanît û fehim biket, ku her Xudê Te‘ala bitinê Rebbe; anku xwey û xudan û xaliqê hemî tişta ye, her Ew bitinê raziqê hemî xudan ruha ye, dan û sitandin, saxkirin û mirandin, fayde û zerer her bi Wî ye, her Ew bitinê du‘ayêt wan kesêt dikevne tengaviyêt giran da qebûl diket, emir hemî her emrê Wî bitinê ye li ser hemî tişta, dan û xêr hemî her yêt destêt Wî

bitinê da, Wî şiyan û qudret li ser kirna tiştekî Ew bixwazît ya hey, Ew di tedbîra hemî kar û barêt kaînat û ‘alêmê da her êkî bitinê ye, yî bê şirîke û bêheval e, Ew yî bikeyfa xwe ye û qet kesek di ser Wî ra û di ber Wî ra nine û nabît.

Fer e û pêtivî ye bizanîn; ku ev Tewhîda Rubûbiyetê bi hezkirin û îrada Xudê Te‘ala ya kewnî; qederî anku bi çêkirin û xulqiyetkirna tiştan ve ya girê daye.

Tewhîda Rubûbiyetê, fê‘il û şola Xudê Te‘ala ye, ev e her wekî xulqiyet kirnê, dana rizqî, saxkirin û mirandinê, barandina baranê, şînkirna gilûgiyayî û tedbîra hemî

kar û bara...

2- Tewhîda Uluhiyyetê; anku hebandin û peristinê, ew jî eve ye; mirov bawer biket; ku hema her Xudayê Jorî bitinê layiqî ‘îbadetî û hukumdariyê ye. Nê ka çawa Ew hukumdarê her heft tebeqêt ‘esmana ye, ‘eynen her wesa Ew bitinê hukumdarê ‘erdî ye jî, anku hindî tiştêt li ser rûyê ‘erdî heyn. Lewa Xudê Te‘ala hemî Pêxemberêt xwe ser xatira vê Tewhîda Uluhiyyetê yêt hinartîn bo mirovan.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَقَدْ بَعَثْنَا فِي كُلِّ أُمَّةٍ رَّسُولًا أَنِ اعْبُدُوا اللَّهَ وَاجْتَنِبُوا الطَّاغُوتَ

“Bi sûnd, Me bo her milet û qewmekî pêxemberek (Qasidek) yê hinartî da ku ew emrî li wan biket û bêjîte wa: “Hûn hema her ‘îbadetî û ta‘etî bo Ellahu Te‘ala bitinê biken û xwe dûr ragirin ji hemî taxûta (anku ji hemî muşrîk û kafiran; ewêt ku dizalim û zordar).”[282]

Tewhîda Uluhiyyetê jî, şol û kirna ‘ebda ye, ev e her wekî; du‘a kirnê, xewfê, xeşyetê, xişu‘ê, rîcayê, tewekulê, înabetê, rexbetê, rehbetê, dana serûnezra, îstîxasê, muhebetê, te’eluhê, ruku’ê, sucdê, tezelul û te‘zîmê ku divêt, ev new‘êt îbadetî û ta‘etî hemî bes bo Xudê Te‘ala bitinê bê riya û rûmetî û xalis û muxlîsane û bi rast û durustî û bi viyan bêne kirin her dem.

Divêt, bizanîn ev Tewhîda Uluhiyyetê bi hezkirin û îrada Xudê Te‘ala ya şer‘î; dînî ve ya girê daye.

3- Tewhîda nav û sîfeta (wesif û xasiyeta), ew jî eve ye; divêt, mirov nav û sîfetêt Xudayê Jorî hemyan ewêt ku di Qurana pîroz û hedîsêt Pêxemberî yêt rast da hatîn û warid bin bête’wîl kirin, înkarkirin û bêteşbîhkirin û pisyarkirin ji çewatiya wan, hema ka çewa ew hatîne Ferz e ‘eynen hema wesa ew bêne qebûlkirin û pejirandin; wesa îman û baweriyê pê bînîn, nê ev nav û sîfetêt he, nav û sîfetêt heqîqîne bo Xudayê Jorî.

Divêt, vê çendê bizanîn û baş fehim bikeyn; ev her du new‘êt Tewhîdê anku; Tewhîda Rubûbiyetê; Xudayiniyê û Tewhîda Uluhiyyetê; hebandin û peristinê, durust nabin û ji mirovî qebûl nabin heta ku bi îman û bawerî îqrar bi Tewhîda nav û sîfeta neête kirin.

282 Sûreta Nehl 36

Nê heta mirov hosa îman û baweriyê bi van her sê new‘ û qismêt Tewhîdê neînît mirov nabîte mu’min; xudan îman û bawerî û Busulman.

Vêca divêt, bi van nav û sîfetêt Xudê Te‘ala çu şirîk bo Wî ne êne çêkirin, ev e bo nimûne; ku hema her Xudê Te‘ala bitinê ‘Elîme, Xellaqe, Reqîbe, Hef’îze, Semede, Rezzaqe, Tewwabe, Hadiye, şafiye, Xafide, Rafi‘e, Mu‘îze, Muzîle, Nafi‘e, Darre, Muhyî û Mumîte…yê van nav û sîfetêt Xudê Te‘ala danîte ser ‘ebdekî û ew bawer biket û bêjît: Ew ‘ebd jî her wekî Xudê Te‘ala layiqî van nav û sîfeta ye û ew ji dişêt van tiştan biket, ewêt ku ev nav û sîfete delaletê dikene ser, ew kes bi vê şîrka mezin ji dînî derdikevît û dixirhît. Nê ev nav û sîfete hema her layiqî Xudê Te‘ala bitinêne; çûnku hema her Ew bitinê dişêt van tiştan biket.

# KELÎMA TEWHÎD Û KELÎMA ŞEHDÊ

Ev her du kelîmêthe anku; kelîma Tewhîd û kelîma Şehdê, her wekî ku her car em dibêjîn **:( La îlahe îlallah -Muhemmedur-resûlullah)** ku kelîma Tewhîdê *ye*.

Yan jî li demê em dibêjîn: (**Eşhedu ella îlahe îlallah we eşhedu enne Muhemmeder-resûlullah**) ku kelîma şehdê *ye*, ev her duke pêk ve û li gelêk di Qur'anê da ne hatîne, belê ew bi vî terzê jêrî yêt van ayeta da hatîn:

Xudê Te'ala ferman diket û dibêjît:

فَاعْلَمْ أَنَّهُ لَا إِلَٰهَ إِلَّا اللَّهُ

"Baş bizanîn ji Ellahu Te'ala pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin (nê hema her Ew bitnê layiqî guhdan û 'îbadetî *ye*)."[283]

Xudê Te'ala dibêjît:

إِلَّا مَنْ شَهِدَ بِالْحَقِّ وَهُمْ يَعْلَمُونَ

"(Hema ew dê xêrê ji vê kelîma şehdê bînin û pê xilas bin); ewêt ku bi heqî û durustî şehdekiyê diden; (anku demê ku ew dibêjin: (Eşhedu ella îlahe îlallah we eşhedu enne Muhemmeder-resûlullah), ew me'na wê bi rast î dizanin û têdigehin (ku ka bo çî ew dibêjin û ew her pê 'emel diken jî)."[284]

Xudê Te'ala dibêjît:

شَهِدَ اللَّهُ أَنَّهُ لَا إِلَهَ إِلَّا هُوَ وَالْمَلَائِكَةُ وَأُولُو الْعِلْمِ قَائِمًا بِالْقِسْطِ لَا إِلَهَ إِلَّا هُوَ الْعَزِيزُ الْحَكِيمُ

283 Sûreta Muhammed 19
284 Sûreta Zûxruf 86

“Ellahu Te‘ala şehdekiyê didet; ku bê şik ji Wî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin. Milyaket û ew ‘alim û zana jî ewêt ku her ‘edaletê bi cih tînin hemî pêk ve şehdekiyê diden ku ji Ellahu Te‘ala pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin. Ellahu Te‘ala yî xurt û jêhatî ye û yî xudan hîkmet e (di hemî kar û kirin û gotinêt xwe da).”[285]

Belê kelîma şehdê hemî pêk ve, li gelêk û bi timamî di van her sê hedîsêt jîrîda; ewêt ku Buxarî û Muslimî riwayet kirîn ya hatî:

عن ابن عمر رضي الله عنهما أن النبي صلى الله عليه وسلم قال : ( أُمِرْتُ أَنْ أُقَاتِلَ النَّاسَ حَتَّى : يَشْهَدُوا أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ ، وَأَنَّ مُحَمَّدًا رَسُولُ اللَّهِ ، وَيُقِيمُوا الصَّلَاةَ ، وَيُؤْتُوا الزَّكَاةَ ، فَإِذَا فَعَلُوا ذَلِكَ عَصَمُوا مِنِّي دِمَاءَهُمْ وَأَمْوَالَهُمْ ، إِلَّا بِحَقِّ الْإِسْلَامِ ، وَحِسَابُهُمْ عَلَى اللَّهِ ). البخاري ومسلم

‘Ebdullahê kurê îmamê ‘Umer (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît; Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- Yê gotî: Xudê Te‘ala emrî li min diket û dibêjîte min: Tu şerî li gel mirovan bike û bêje wan wern şehde biden û heta hûn nebêjin: (Eşhedu ella îlahe îlallah we eşhedu enne Muhemmeder-resûlullah), ez bela xwe ji hewe venakem, bila ew bi durustî nivêjan biken û bi timamî zikata malê xwe biden, vêca wextê wan ev tişt e bicih înan û kirin, ev e wan xûna xwe û malê xwe ji min parast, ji bilî heqê dînê Îslamê; (wekî ku heke êk zînayê biket divêt, ew bête hed dan…), hisaba wan ya li teref Xudê Te‘ala).[286]

---

285 Sûreta Alî ‘Îmarna 18
286 Buxarî û Muslim

عن ابن عباس رضي الله عنهما أن النبي صلى الله عليه وسلم بعث معاذا رضي الله عنه إلى اليمن فقال : ( ادْعُهُمْ إِلَى شَهَادَةِ أَنْ لَا إِلَهَ إِلَّا اللَّهُ وَأَنِّي رَسُولُ اللَّهِ ، فَإِنْ هُمْ أَطَاعُوا لِذَلِكَ ، فَأَعْلِمْهُمْ أَنَّ اللَّهَ قَدْ افْتَرَضَ عَلَيْهِمْ خَمْسَ صَلَوَاتٍ فِي كُلِّ يَوْمٍ وَلَيْلَةٍ ، فَإِنْ هُمْ أَطَاعُوا لِذَلِكَ ، فَأَعْلِمْهُمْ أَنَّ اللَّهَ افْتَرَضَ عَلَيْهِمْ صَدَقَةً فِي أَمْوَالِهِمْ ، تُؤْخَذُ مِنْ أَغْنِيَائِهِمْ وَتُرَدُّ عَلَى فُقَرَائِهِمْ ) .البخاري ومسلم

‘Ebdullahê kurê îmamê ‘Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît: Li demê Pêxemberî -selat û selam li ser bin-

Mu‘azê kurê Cebelî (Xudê jê razî bît) birêkirye nav welatê Yemenê gotê: Tu li wêrê bêje wan werin şehde biden û bêjin: (Eşhedu ella îlahe îlallah we eşhedu ennî resulullah), heke wan guhê xwe date; kelîma şedê got, tu nîşa wan bide û bêje wan Xudê Te‘ala di her şev û rojekê da pênç nivêj li ser wan yêt ferz kirîn; ku ew biken, heke wan guhê xwe da te; nivêjêt xwe kirin, tu nîşa wan bide û bêje wan Xudê Te‘ala dana zikatê ji malê wan li ser wan ya ferzkirî; ku dê ji zengînêt wan bête wergirtin û li ser feqîrêt wan bête belav kirin).[287]

‘Ebdullahê kurê îmamê ‘Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît; Pêxemberî -selat û selam li ser bin- ka çewa wî sûretek ji Qur’anê nîşa me dida ‘eynen wesa wî tehiyyat jî nişa me dida û bo me digot:

عَنِ ابْنِ عَبَّاسٍ أَنَّهُ قَالَ كَانَ رَسُولُ اللَّهِ صلى الله عليه وسلم يُعَلِّمُنَا التَّشَهُّدَ كَمَا يُعَلِّمُنَا السُّورَةَ مِنَ الْقُرْآنِ فَكَانَ يَقُولُ « التَّحِيَّاتُ

287 Buxarî û Muslim

الْمُبَارَكَاتُ الصَّلَوَاتُ الطَّيِّبَاتُ لِلَّهِ السَّلاَمُ عَلَيْكَ أَيُّهَا النَّبِيُّ وَرَحْمَةُ اللَّهِ وَبَرَكَاتُهُ السَّلاَمُ عَلَيْنَا وَعَلَى عِبَادِ اللَّهِ الصَّالِحِينَ

أَشْهَدُ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ وَأَشْهَدُ أَنَّ مُحَمَّدًا رَسُولُ اللَّهِ

Ettehiyyatu elmubarekatu essalawatu etteyyîbatu lîlllahî. Esselamu ‘eleyke eyyuhennebiyyu we rehmetullahî we_berekatuhu. Esselamu ‘eleyna we ‘ela‘îbadîllahîssalihiyn Eşhedu ella îlahe îllellah. We eşhedu enne Muhemmederresûlullah.[288]

Nê ev her du kelîmêt he anku; kelîma Tewhîdê: (La îlahe îlallah -Muhemmedur-resûlullah) û kelîma şehdê: (Eşhedu ella îlahe îlallah we eşhedu enne Muhemmeder-resûlullah), kilîlkêt dînê Îslamê ne, qet çu ‘ebdêt bê‘uzur; ewêt ku dişên bi ezmanê xwe bêjin, bêyî gotna van her du kelîma neşên Busulman bibin, ev her du kelîmêt he; anku kelîma Tewhîdê û kelîma Şehdê durûşmêt dînê Îslamê ne; ewêt ku ji hemî durûşma dimezintir in, lewma li ser ‘alayê dînê Îslamê ev kelîma Tewhîdê ya nivîsiye di nav hemî Busulmana da li dinyayê û kelîma şehdê jî hero pêncara li hemî mizgeftêt dinyayê li ser cihêt bilind û bi bilindgoya tête gotin.

(لَا إله إلاَّ الله مُحَمَّد رَسُول الله)

“La îlahe îllallah Muhammedur Resulullah”

Me‘na kelîma Tewhîdê; anku “La îlahe îllallah” jî eve ye; anku ji Xudê Te‘ala pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin; ku ew di layiqî wê hindê bin mirov ‘îbadetî bo wan biket yan jî îta‘eta wan biket; guhê xwe bidene;

288 Buxarî

emr û nehyêt wan û gotinêt wan bicih bînin, belê hema her Xudê Te‘ala bitinê layiqî wê hindê ye ku mirov hemî her ‘îbadetî bo Wî bitinê biken û her guhê xwe bidene emr û nehyêt Wî û gotinêt Wî bitinê bicih bînin û bi Wî qaêl bin û îta‘eta Wî biken ji hemî lave.

Nê gava mirovî ev kelîma Tewhîdê: "La îlahe îllallah" got ew di dimnê xwe da; -Muhammedur Resulullah- jî di girîte ber xwe; anku heçwekî ku mirovî ew jî li gel gotî wesa tête zanînin û hisab kirin.

Eve her wekî em hemî baş dizanîn, gelek mirov heta di vî demê em tê da dijîn jî, ji bilî Xudayê Jorî yê hinde tiştêt dî bo xwe dikene xudê û yê ‘ibadetî bo diken; bo nimûne; haşa şeytanî, mirovan, qebra, agirî, bera, dara, stêhra û heywana û gelek tiştêt dî jî, ew li şûna Xudayê Jorî yê diperêsin û ‘îbadetî bo biken! Nê ew tiştêt; ew diperêsin ew hemî direw in û dibatilin.

Belê hema her Xudayê Jorî yî pak û berî ye ji hemî kêmasiyan; hema her Ew bitinê layiqî guhdan û ‘îbadet û îta‘etî û medh û sena ye.

Me‘na kelîma Şehdê:

(أَشْهَدُ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ وَأَشْهَدُ أَنَّ مُحَمَّدًا رَسُولُ اللَّهِ)

"Eşhedu ella îlahe îlallah we eşhedu enne Muhemmeder-resûlullah"

Me‘na kelîma Şehdê jî eve ye: (Ez şehdekiyê didem û bi ezmanê xwe dibêjim û bi dilê xwe tesdîq û bawer dikem ku jibilî Ellah Te‘ala, qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin û her dîsa ez şehdekiyê didem û bi ezmanê xwe dibêjim û bi dilê xwe tesdîq û bawer dikem ku Muhemmed-selat û selam li ser bin- qasid û pêxemberê emê Xudayê Jorî ye).

Pêxemberî -selat û selam li ser bin-yê gotî:

“Yê bizanît ji Xudayê Jorî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin [ku di layiqî wê hindê bin ‘îbadet bo bête kirin] û li ser vê hindê jî ew kes bimrît, ew dê çite Biheştê.[289]

Êkî gote Hesenê Besrî (Xudê jê razî bît) hinde mirov dibêjin; yê bêjît: (La îlahe îlallah) dê çîte Biheştê. Hesenê Besrî gotê: Rast e, yê bêjît: (La îlahe îlallah) dê çîte Biheştê; belê yê ku bêjît divêt, ew heqê wê bidetê (ka piştî gotina wê kelîmê çî li ser wî kesî ferz dibît divêt, ew bicih bînît û pê ‘emel biket).

Wehbê kurê Munebehî (Xudê jê razî bît) gote wî kesî yê ku pirsyar jê kirî û gotiyê: Ma (La îlahe îlallah) nekilîlka Biheştê ye?

Wî gotê:rast e we ye, belê hemî kilîlka didanûkêt xwe yêt heyn, ma heke tu kilîlkeka bi didanûk binî dê bo te deryê Biheştê veket? Nexêr, nê heke ya bêdidanûk bît bo te venaket).

Li demê em dibêjîn: “La îlahe”, ev e me ew xudayêt dî yêt direw; ewêt ku li ser rûyê ‘erdî hindek diperêsin û ‘îbadetî bo diken û li gel hemî taxuta, me ew hemî ji binî û bi timamî pêk ve redd û înkar kirin û li demê em di dûv ra jî dibêjîn: “Îllallah”, ev e em yê dibêjîn; me hema her Xudê Te‘ala bitinê qebûle, ku Ew Xudayekî heqe û yî bê şirîk û bêheval e, hema her Ew bitinê yî hejî û layiqe wê hindê ye ku hema her hemî new‘êt ‘îbadetî bes bo Wî bitinê bêne kirin.

Tiştê ji hemî tiştan pêtivî û lazimtir bo îmandaran zanîna ‘eqîda rast û durust e ; anku Tewhîd, îman û baweriyê ye”, çunku ‘eqîda rast û durust binîşe ye bo

---

289 Muslim

zanîna hemî ‘îlmêt şirî‘etî û rêka ji hemî rêka baştir e bo niyasîna Xudayê Jorî.

Vêca zanîna Tewhîd û ‘eqîdê wacibê jirêve ye, li ser hemî Busulmanêt îmandar; da ku ew bişên xwe ji muşrîkan, kafiran û bîd‘etçiya biparêzin û sitare biken û da ew rêka xwe şaş neken; nexasima vî zemanî; çunku heqî û batil yêt têkhilê êk bîn, divêt, ji navêk bêne cuda û çertkirin!

Nê esasê hemî qencî û başiya bo jîn û jiyara mirovêt îmandar li dinya yê û li axretê her bi rêka zanîna Tewhîd û ‘eqîda rast û durust e. Nê hema her bi Tewhîd û ‘eqîda rast û durust, îman û bawerî, ‘îbadet, kar û ‘emelêt mirovî qebûl dibin û di dinya û axretê da mirov dikevîte êminahî û tenahiyê û jîn û jiyareka bi ser bilindî û serferazî.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا خَلَقْتُ الْجِنَّ وَالْإِنسَ إِلَّا لِيَعْبُدُونِ

“Min ecine û mirov yêt dayîn û xuliqadîn da ku ew hema her bes bo Min bitinê ‘îbadetî û ‘ebdîniyê biken û Min binyasin ku Ez êkê bitinême.”[290]

Şeyxulîslam Îbin Teymiyê Herranî (Rehma Xudê li ser bit) dibêjît: ‘Eslê selahetê; başbîniyê: Tewhîd; îman û bawerî ye, ‘Eslê şer û xirabiyê: Şîrk û kafirî ye.

Berê xwe bidenê Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin-ew çewa jirê ve û berî hemî tiştan li ser Tewhîd; îman û baweriyê yê rawestayî.

‘Ebdullahî kurê Cûndubê (Xudê jê razî bît) dibêjît:

(Em çend cihêlêt bi hêz û quwet bîn li rex û doranêt Pêxemberî-selat û selam li ser bin- wî jirê ve berî ku em

290 Sûreta Zariyat 56

xwe bi‘elimîne Qur’anê Tewhîd; îman û bawerî nîşa me dida, paşê piştî zanîna Tewhîd, îman û baweriyê, me xwe di ‘elimande xwandina Qur’anê û me bi xwandina Qur’anê îman û baweriya xwe zêde tir dikir).[291]

Pêxember -selat û selam li ser bin- bi vê gotina xwe behsê xwe bi xwe diket û dibêjît: Ez bo hewe di dereca babê hewe da me; ez hewe di ‘elimînim e (Tewhîdê; îman û baweriyê) nîşa hewe didem.[292]

Herdîsa Pêxember-selat û selam li ser bin-dibêjît: Xudayê Jorî ez birênekirîme ku li ser hewe (dînê Îslamê asê bikem û) bi zehmet bêxim, yan jî bi dûv sur û kurêt hewe bikevim; hetka hewe bibem, nexêr; belê Xudayê Jorî ez bo hewe yê hinartîm; da ku ez rêkêt xêrê û başiyê nîşa hewe bidem û da li ser hewe, xwe ‘elimandina (dînî; Tewhîdê û îman û baweriyê) bi sanahî bêxîm.[293]

291 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya sehîh e
292 Muslim
293 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya sehîh e

# ŞERT Û MERCÊT KELÎMA TEWHÎDÊ

"لاإله إلا الله"

"La îlahe îllallah"

Piştî Qur'ana Pîroz gotina ji hemî gotina bi qedirtir li dev Xudê Te'ala ev kelîma Tewhîdê ye, vêca divêt, em baş bizanîn û fehim bikeyn ku ev kelîma Tewhîdê; anku "La îlahe îllallah" binîşe û asasê hemî ruknêt îman û Îslamê ye, nê heta ev kelîma Tewhîdê li dev mirovî ya parastî û durust nebît, mirov xêrê ji dîn, îman û baweriya xwe nabînît û pê di dinya û axretê da rûspî û serferaz nabît.

Xudê Te'ala dibêjît:

ذَلِكَ بِأَنَّ اللَّهَ هُوَ الْحَقُّ وَأَنَّ مَا يَدْعُونَ مِنْ دُونِهِ هُوَ الْبَاطِلُ

"Eha ev e, bê şik hema her Ellahu Te'ala yî heq û rast e, ji Wî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin. Bê şik ew tiştêt ji bilî Ellahu Te'ala ew 'îbadetî bo diken ew hemî dibatil û pûçin, bê şik hema her Ellahu Te'ala yî bilind û mezin e."[294]

Vêca heta ku Xudê Te'ala vê kelîma Tewhîdê; "La îlahe îllallah" ji mirovî qebûl biket heşt merc û şert yêt heyîn, ew jî eve ne:

1- 'Îlim

2- Qena'et

3- Qebûlkirin

4- Îtaetkarî

5- Rast î

294 Sûreta Hec 62

6- Îxlas

7- Evîndarî

- ‘Îlim û zanîn, şerteke bo qebûlbîna gotina “La îlahe îllallah” anku yê bizanîn gotina “La îlahe îllallah” dibêjît ew hindî tiştêt ku fer e bêne înkar û redd kirin û hindî tiştêt pêtivî ye ku bêne wergirtin û qebûlkirin ew, wan tiştan hemyan fehim diket çunku ew bizanîn yê dibêjît:

(La îlahe îllallah).

Eve Xudayê Jorî vê hindê bo me dibêjît û rohn diket:

فَاعْلَمْ أَنَّهُ لا إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ

“(Ey Muhemmed!) Tu bizane, bê şik Ellahu Te‘ala, Îlahekî bitinê ye, ji Wî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin (ey gelî Busulmana! Demê hûn şehdediden û dibêjin: (Eşhedu ella îlahe îlallah (we eşhedu enne Muhemmeder-resûlullah), hûn me‘na wê bizanin û têbigehin ka hûn bo çî we dibêjin.”[295]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِلاَّ مَنْ شَهِدَ بِالْحَقِّ وَهُمْ يَعْلَمُونَ

“(Hema ew dê xêrê ji vê kelîma şehdê bînin û pê xilas bin); ewêt ku bi heqî û durustî şehdekiyê diden; (anku demê ku ew dibêjin: (Eşhedu ella îlahe îlallah we eşhedu enne Muhemmeder-resûlullah), ew me‘na wê bi rast î dizanin û têdigehin (ku ka bo çî ew dibêjin û ew her pê ‘emel diken jî).”[296]

Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- dibêjît:

295 Sûreta Muhemmed 19
296 Sûreta Zuxruf 86

“Ew kesê bimrît, ew bizanît ku ji bilî Xudayê Jorî qet çu xuda û me‘bûdêt dî yêt heq û rast nînin û nabin, ew dê çîte Biheştê.[297]

- Qena‘et û bê gumanî, şerteke bo qebûlbîna gotina “La îlahe îllallah”, anku divêt, bi qena‘et û qaîlbîna dilî; bê şik û guman mirov îman û baweriyê bînît bi me‘na gotina “La îlahe îllallah” ku ka ew çî îsbat û redd diket.

Yê vê gotina “ La îlahe îllallah” bi devê xwe dibêjît belê heke dilê wî jê yî xafil bît yan qena‘et pê nebît û tam dilê wî li ser nerûnît ew munafiq e.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَالَّذِينَ يُؤْمِنُونَ بِمَا أُنْزِلَ إِلَيْكَ وَمَا أُنْزِلَ مِنْ قَبْلِكَ وَبِالآخِرَةِ هُمْ يُوقِنُونَ

“(Ey Muhemmmed!) Mû’minêt rast û durust), hema her ew in; ewêt ku îman û baweriyê tînin bi wê Qur’anê, ya ku Ellahu Te‘ala bo te hinartiye xwarê û bi wî tiştî jî yê ku Wî berî te jî hinartiye xwarê û ew ji dil û bi êqîn îman û baweriyê tînin bi axretê jî (anku bi roja qiyametê).”[298]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ الَّذِينَ آمَنُوا بِاللَّهِ وَرَسُولِهِ ثُمَّ لَمْ يَرْتَابُوا وَجَاهَدُوا بِأَمْوَالِهِمْ وَأَنْفُسِهِمْ فِي سَبِيلِ اللَّهِ ۚ أُولَٰئِكَ هُمُ الصَّادِقُونَ

“Hema her îmandarêt rast û durust ew in; ewêt ku ji dil îman û bawerî înandî û tînin bi Ellahu Te‘ala û bi Pêxemberê Wî û paşê ew di derheqa îmana xwe da qet na kevne şik û gumanê û ew bi malê xwe û bi ruhêt xwe

297 Muslim
298 Sûreta Beqer e 4

di rêka dînê Ellahu Te'ala da cîhadê diken. Nê hema her ew in; yêt rastgo."[299]

Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- dibêjît:

"Ez şehdekiyê didem û bi ezmanê xwe dibêjim û bi dilê xwe tesdîq û bawer dikem ku jibilî Ellah Te'ala qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin; û her dîsa ez şehdekiyê didem û bi ezmanê xwe dibêjim û bi dilê xwe tesdîq û bawer dikem ku Muhemmed-selat û selam li ser bin- qasid û pêxemberê emrê Xudayê Jorî ye, heçî 'ebdê bi van her du kelîma biçîte hûzîra Xudayê Jorî û ew di fehimkirna me'na wan da yî bi şik û guman nebît, îlleh ew dê çîte Biheştê.[300]

- Qebûlkirin û pejirandin, şerteke bo qebûlbîna gotina "La îlahe îllallah", me'na qebûlkirinê jî eve ye; ku li demê mirov dibêjît "La îlahe" fer e jirêve mirov bi îman û bawerî û bi kirin û gotinêt xwe hemî taxuta û heval bendêt wan redd û înkar biket, divêt, mirov wan me'na hemyan jî ewêt ku ji gotina [ La îlahe] têne zanîn û fehmkirin baş bizanît û xwe tê bigehînît; da ku mirov bi zanînin wan hemyan red û înkar biket û jinûka didûv ra divêt, mirov wan tiştan hemyan; ewêt ku gotina [Îllallah] di derheqa Xudayê Jorî da îsbat û aşkira diket; wekî Tewhîda Rubûbiyeta Wi; Xudatiya Wi, Tewhîda Uluhiyyeta Wî; hebandin û peristina Wî û Tewhîda nav û sîfetêt Wî hemyan bi îman û baweriyeka qaîm û mikum qebûl biket û wî şirî'etî jî yê ku Wî qasidê xwe Muhemmed -selat û selam li ser bin-pê hinartî bi viyan qebûl biket û her pê 'emelbiket.

299 Sûreta Hucurat 15
300 Muslim

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَمَنْ يَكْفُرْ بِالطَّاغُوتِ وَيُؤْمِن بِاللّهِ فَقَدِ اسْتَمْسَكَ بِالْعُرْوَةِ الْوُثْقَىَ لاَ انفِصَامَ لَهَا وَاللّهُ سَمِيعٌ عَلِيمٌ

“Vêca heçî kesê taxûta (şeytanî, pûta, rêk û rêbazêt şaş û xelet û wan jî; ewêt ku mirovan dixirînin ji rêka Ellahu Te‘ala dûr û varê diken) înkar û redd biket û paşê îman û baweriyê bînît bi Ellahu Te‘ala, eha ev e, wî xwe bi wê qulpa ji hemyan qayimtir ve qayim ragirt; ewa ku çû caran naqetît. Ellahu Te‘ala haj hemî deng û pêjiniya heye û Ew yî zana ye.”[301]

Xudê Te‘ala dibêjît:

أَفَمَنْ أَسَّسَ بُنْيَانَهُ عَلَى تَقْوَى مِنَ اللَّهِ وَرِضْوَانٍ خَيْرٌ أَمْ مَنْ أَسَّسَ بُنْيَانَهُ عَلَى شَفَا جُرُفٍ هَارٍ فَانْهَارَ بِهِ فِي نَارِ جَهَنَّمَ

“Erê ma Ew ê binîşe û xîmê avahiyê xwe li ser teqwatiyê û riza Ellahu Te‘ala ya mezin danadî çêtir e, yan jî Ew ê ku xîm û asasê avahiyê xwe danadiye ser lêva kendeka ruhî; ewa ku dê wî jî li gel xwe gur kete di nav agirê Cehnemê da?”[302]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّهُمْ كَانُوا إِذَا قِيلَ لَهُمْ لا إِلَهَ إِلاَّ اللَّهُ يَسْتَكْبِرُونَ

“Bê şik her demê bo wan dihate gotin: “Ellahu Te‘ala, (Îlahekî bitinê ye) ji Wî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin” wan xwe qude û mezin dikir.”[303]

301 Sûreta Beqer e 256
302 Sûreta Saffat 35
303 Sûreta Ehzab 36

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا كَانَ لِمُؤْمِنٍ وَلَا مُؤْمِنَةٍ إِذَا قَضَى اللَّهُ وَرَسُولُهُ أَمْرًا أَن يَكُونَ لَهُمُ الْخِيَرَةُ مِنْ أَمْرِهِمْ ۗ وَمَن يَعْصِ اللَّهَ وَرَسُولَهُ فَقَدْ ضَلَّ ضَلَالًا مُّبِينًا

“Qet‘iyen durust nîne; bo çu zelamêt îmandar û jinkêt îmandar demê ku Ellahu Te‘ala û Pêxemberê Wî li ser tiştekî hukumek da, vêca ew rabin bo xwe wê hilbijêrin û biken ya ku dilê wan dixwazît. Heçî kesê bê-emriya Ellahu Te‘ala û Pêxemberê Wî biket (anku şerî‘etî qebûl neket), bê şik ew xirha; bi xirhaneka aşkira (û ji rêka heq û rast dûr ket).”[304]

Ebû Mûsa (Xudê jê razî bît) dibêjît, Pêxemberî -selat û selam li ser bin-yê gotî: “Metela wî tiştê yê ku Xudayê Jorî ez pê hinartim; ji rêka hîdayetê û ‘îlm û zanînê wekî metela baraneka xweş e; demê ku li ser ‘erdekî dibarît, vêca hindek ji wî ‘erdî yê hey axa wî ya paqije; bi verêj e av di nav da dixew inît û ew ‘erd gelek gilûgiyayî şîn diket. Hindekî dî ji wî ‘erdî yê hey axa wî av bi nav nakevît; av li ser dibîte ger Xudayê Jorî menfî’etê ji wê avê didete mirovan. Vêca ew jê vedxwen û pê mer û malatêt xwe û çandiniya xwe av diden. Hindekî dî ji wî ‘erdî yê hey baran lê dibarît ew ‘erd (wekî) tehtekî hulî ye, av lê naxew inît û li ser nabîte ger û ew ax çu gilûgiyayî jî şîn naket. Vêca eha ev e wekî metela wî kesiye; yê ku xwe di dînê Xudayê Jorî da zana diket û ji wî tiştê Xudayê Jorî ez pê hinartim faydeyî dibînît; ew xwe di dînî da şareza û zana diket û bi wê zanîna xwe ‘emel diket û ew bo xelk û ‘alemê jî dînî dibêjît rohin û aşkira diket. Belê, metela wî kesî, yê ku serê xwe bi rêka wê hîdayetê ya ku Xudayê Jorî ez pê hinartim bilind neket û ew wê rêka hîdayetê ya ku Xudayê Jorî ez

304 Sûreta Ehzab 36

pê hinartim qebûl neket (ew xêrê ji xwe nabînît û qet kesek jî xêrê ji wî nabînît)."[305]

- Înqiyad û îta'etkarî, şerteke bo qebûlbîna gotina "La îlahe îllallah", me'na îta'etkariyê guhdarî û mut'bînî ye; anku divêt, mirov her wekî kelîma "La îlahe îllallah" dibêjît û ji me dixwazît, em dirêjiyê bideyne jîn û jiyara xwe û her teslîmî emrê Xudayê Jorî bibîn û guhdariya gotinêt Pêxemberê Wî yêt rast û durust jî bikeyn; bêkîmkirin û zêdehî û bi viyan pê 'emel bikeyn û di jîn û jiyara xwe da; ye'nî divêt, em bi timamî ji hemî la ve teslîmî emrê Xudayê Jorî bibîn; emr û nehiyêt Wî bi cih bînîn û ji wê rêkê ya ku Pêxemberê Wî bo me pê hatî xwe şaş û xafil nekeyn çû caran.

Xudê Te'ala dibêjît:

وَأَنِيبُوا إِلَى رَبِّكُمْ وَأَسْلِمُوا لَهُ

"(Ey gelî mirovan!) Hûn bizivirine bi nik Rebbê xwe ve û ji dil tobe biken û teslîmî emrê Wî bibin ji hemî la ve."[306]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمَنْ أَحْسَنُ دِينًا مِمَّنْ أَسْلَمَ وَجْهَهُ لِلَّهِ وَهُوَ مُحْسِنٌ وَاتَّبَعَ مِلَّةَ إِبْرَاهِيمَ حَنِيفًا وَاتَّخَذَ اللَّهُ إِبْرَاهِيمَ خَلِيلًا

"Erê ma dînê kê ji dînê wî yî qayimtir û çêtir e, Ew ê ku

xwe bi timamî teslîmî Ellahu Te'ala kirî û diket û li gel wê hindê jî ew yî qencîker bît û bi rast î û durustî bi dûv dînê heq ketî ku dînê Îbrahîmî ye? Ellahu Te'ala Îbrahîm bo xwe kirbû dost û xweştivî."[307]

305 Buxarî û Muslim
306 Sûreta Zumer 54
307 Sûreta Nîsa 125

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمَنْ يُسْلِمْ وَجْهَهُ إِلَى اللَّهِ وَهُوَ مُحْسِنٌ فَقَدِ اسْتَمْسَكَ بِالْعُرْوَةِ الْوُثْقَى

"Heçî kesê ji dil 'îbdetî û ta'etî bo Ellahu Te'ala biket û bi timamî xwe dispêrîte Ellahu Te'ala û ew bi xwe jî li gel wê hindê yî qencîker bît, bê şik ev e, wî xwe bi qulpa ji hemyan qayimtir ve qayim ragirt."[308]

Pêxemberî -selat û selam li ser bin-yê gotî: "Qet kesek ji hewe nabîte xudanê îman û baweriyeka kamil heta ku ew bi can û dil ne bîte tabi'ê rêka wî şirî'etî yê ku Xudayê Jorî ez pê hanartîm.[309]

- Rastî û durustî, şerteke bo qebûlbîna gotina "La îlahe îllallah", Me'na rastiyê eve ye; ku mirov gotina"La îlahe îllallah" bi devê xwe bêjît, bidilê xwe tesdîq û bawer biket û bi aşkirahî jî pê 'emel piket. Eha ev e bi vê qebûlkirna hosa me ev kelîme anku "La îlahe îllallah" rast got û me baş me'na wê zanî û fehimkir.

Xudê Te'ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا اتَّقُوا اللَّهَ وَكُونُوا مَعَ الصَّادِقِينَ

"Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Hûn gelek ji Ellahu Te'ala bitirsin; (bê-emriya Wî neken) û hûn hema her li gel mirovêt rastgo rabin û rûnin û têkiliya wan biken."[310]

Mû'azê kurê Cebelî (Xudê jê razî bît) dibêjît Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî: "Heçî kesê şehde bidet anku bêjît"(Eşhedu ella îlahe îlallah we eşhedu enne Muhemmeden 'ebduhu we resuluh)," bi dilekî rast bawer

308 Sûreta Luqman 22
309 Ev hedîs e ya zeîfe belê, me'na wî ya rast û durust e.
310 Sûreta Tewbe 119

biket, îlleh Xudayê Jorî dê leşê wî li ser agirê Cehnemê heram ket.[311]

- Îxlas û dilsozî, şerteke bo qebûlbîna gotina “La îlahe îllallah”, me‘na îxlasê eve ye; ku mirov ji dil û bi îman û bawerî vê gotina “ La îlahe îllallah” bêjît û ji dilekî safî; bê riya û rûmetî pê ‘emel biket, ev e hîngê mirov ji wan hemî qisim û new‘êt şîrkê berî bû û dûr ket; ewêt ku gotina “La îlahe îllallah” pê betal dibît.

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ إِنِّي أُمِرْتُ أَنْ أَعْبُدَ اللَّهَ مُخْلِصًا لَّهُ الدِّينَ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje: “Emrê min yê hatiye kirin ku ez hema her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Ellahu Te‘ala bitinê bikem û bi muxlisî bo Wî xizmeta dînê Wî bikem.”[312]

Xudê Te‘ala dibêjît:

أَلا لِلَّهِ الدِّينُ الْخَالِصُ

“Hûn xwe hişyar biken û baş bizanin Xudê Te‘ala hema wan kar û ‘emela bitinê qebûldiket; ewêt ku xalis û muxlisane bo Wî bitinê têne kirin.”[313]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا أُمِرُوا إِلاَّ لِيَعْبُدُوا اللَّهَ مُخْلِصِينَ لَهُ الدِّينَ

“Belê emrê wan hema bi wê hindê yê hatiye kirin; ku ew ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Ellahu Te‘ala bitinê biken (û ji dilekî safî xizmetê bo dînê Wî biken).”[314]

311 Buxarî
312 Sûreta Zumer 11
313 Sûreta Zumer 3
314 Sûreta Beyyîne 5

Ebû Hûreyre (Xudê jê razî bît) dibêjît Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî: "Mirovê ji hemî mirovan pitir serferaz li roja qiyametê bi mehder û berevaniya min, ew kese yê ku ji dilê xwe; xalis û muxlîsane dibêjît: "La îlahe îllallah"[315]

- Evîndarî û hejêkirin, şerteke bo qebûlbîna gotina "La îlahe îllallah", me'na hejêkirinê eve ye; ku mirov ji dil û bi viyaneka rast û durust hej gotina "La îlahe îllallah" û ehlê wê biket û di kûratiya dilê xwe da qebûl biket û li ber ronahiya wî dirêjiyê bidete jîn û jiyara xwe ji hemî la ve.

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمِنْ النَّاسِ مَنْ يَتَّخِذُ مِنْ دُونِ اللَّهِ أَنَدَاداً يُحِبُّونَهُمْ كَحُبِّ اللَّهِ وَالَّذِينَ آمَنُوا أَشَدُّ حُبّاً لِلَّهِ

"Hindek ji mirovan yêt heyn ew şirîk û hevkûfan bo Ellahu Te'ala çêdiken û ew her wekî hej Ellahu Te'ala diken, ew we hej wan şirîk û he0vkûfan jî diken, ewêt ku ew bo Ellahu Te'ala çêdiken. Belê, ewêt îman û bawerî înandî, ew hema her ji dil û pitir hej Ellahu Te'ala bitinê diken."[316]

Xudê Te'ala dibêjît:

قُلْ إِنْ كُنْتُمْ تُحِبُّونَ اللَّهَ فَاتَّبِعُونِي يُحْبِبْكُمْ اللَّهُ وَيَغْفِرْ لَكُمْ ذُنُوبَكُمْ

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: "Heke rast e hûn hej Ellahu Te'ala diken, hûn li dûv min werin; bi wê 'emel biken ya ku ez bo hewe dibêjim. Ellahu Te'ala dê hej hewe ket û dê gunehêt hewe 'efûket."[317]

315 Buxarî
316 Sûreta Beqer e 165
317 Sûreta Alî 'Îmran 31

Xudê Te'ala dibêjît:

وَاللَّهُ وَرَسُولُهُ أَحَقُّ أَن يُرْضُوهُ إِن كَانُوا مُؤْمِنِينَ

"Belê hema her Ellahu Te'ala û Pêxemberê Wî layiq û hejîtirin ku ew ji xwe razî biken, heke rast e ew dixudan îman û bawerî ne".[318]

Xudê Te'ala dibêjît:

لَقَدْ كَانَ لَكُمْ فِي رَسُولِ اللهِ أُسْوَةٌ حَسَنَةٌ

"(Ey gelî îmandaran!) Bi sûnd, bo hewe di gotin, kar û kirin (di hal û ehwalêt resulê Ellahu Te'ala da) nimûneyeka gelek baş û berketî ya hey; anku hûn (di hemî şol, kar û barêt dînê xwe û di jîn û jiyara xwe da) hema her çav li Pêxemberî biken û wekî wî bin".[319]

Enesê kurê Malik (Xudê jê razî bît) dibêjît, Pêxemberî-Selat û selam li ser bin- yê gotî: "Êk ji hewe nabîte xudan îman û baweriyê hetta ku ez ji 'eyalê wî, ji babê wî û ji hemî mirovan pitir yî şirîntir nebim li dev wî."[320]

Xudê Te'ala dibêjît:

النَّبِيُّ أَوْلَىٰ بِالْمُؤْمِنِينَ مِنْ أَنْفُسِهِمْ

"Pêxember bo îmandaran ji nefis û ruha wan bo wan pêtivîtir û lêzimtire, (vêca divêt, yêt xudan îman û bawerî ji ruha xwe pitir hej Pêxemberê xwe biken; li emr û nehyêt wî dihişyar bin)."[321]

318 Sûreta Tewbe 62
319 Sûreta Ehzab 21
320 Buxarî
321 Sûreta Ehzab 6

## MEFA Û FAYDÊT TEWHÎDÊ

Xudê Te‘ala dibêjît:

يُثَبِّتُ اللَّهُ الَّذِينَ آمَنُوا بِالْقَوْلِ الثَّابِتِ فِي الْحَيَاةِ الدُّنْيَا وَفِي الْآخِرَةِ

"Ellahu Te‘ala wan; ewêt ku îman û bawerî înandî di jîn û jiyara dinyayê da û di axretê jî da bi gotina qayim û mukûm dê wan ragirît anku bi gotina Tewhîdê; (La îlahe îllallah)."[322]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَكَانَ حَقًّا عَلَيْنَا نَصْرُ الْمُؤْمِنِينَ

"Nê fer û pêtivî ye li ser Me ku Em her harîkariya îmandaran bikeyn û wan biser bêxîn; ji tengaviya xilas bikeyn."[323]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ اللَّهَ يُدَافِعُ عَنِ الَّذِينَ آمَنُوا ۗ إِنَّ اللَّهَ لَا يُحِبُّ كُلَّ خَوَّانٍ كَفُو

"Bê şik Ellahu Te‘ala, li hemberî kafiran her dê berevaniyê ji wan diket ewêt ku ji dil îman û bawerî înandî. Qet Ellahu Te‘ala hej çu xayîna naket, nexasima; ewêt ku înkara qencî û çakiyêt Wî diken."[324]

Demê Tewhîd îman û bawerî têkilî nav çerg û xûna îmandarî bû û di dil û mejiyê wî da qaîm û mûkum cihê xwe girt, ev îmandarê hosa di dinya yê da ji Xudayê Jorî pêvetir qet ji kesekê natirsît; çûnku ew şêrê Xudaye û Xudê piştevanê wî ye û heke ew li ser vê îman û baweriyê

322 Sûreta Îbrahîm 27
323 Sûreta Rom 47
Sûreta Hec 38
324 Sûreta En‘am 82

jî bimrît, miheqeq ev hinde li axretê bi timamî dê wî dûr ragirît ji agirê Cehnemê, înşallah ew dê bi ser ferazî jî çîte Biheştê û hûzûra Rebbê xwe.

Xudê Te'ala dibêjît:

الَّذِينَ آمَنُوا وَلَمْ يَلْبِسُوا إِيمَانَهُم بِظُلْمٍ أُولَٰئِكَ لَهُمُ الْأَمْنُ وَهُم مُّهْتَدُونَ

"Ewêt îman û bawerî înandî û çu zilm; anku şîrk têkilî nav îman û baweriya xwe nekirî, êmnahî û tenahî bo wa ye, eha hema her ew in; ewêt ku li ser rêka heq û rast."[325]

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- dibêjît:

Heqê 'ebda ye li ser Xudê Te'ala ku Ew kesekê ji wan; ewêt ku bi çu tiştan; şirîka bo Wî çêneken Ew wan 'ezab nedet.[326]

Tewhîd egera ji hemî egera mezintir e û rêkeka êkane ye bo muhafize û tekûziya îman û baweriya mirovî û gehiştina rizamendiya Xudê Te'ala û berevaniya û şefaeta Pêxemberê Wî-selat û selam li ser bin-.

Tewhîd, îman û baweriya xalis û muxlîsane mirovî bi Xudê Te'ala bitinê ve girê diden û egerin bo qebûlbîna hemî 'îbadet û kar û 'emelêt mirovî û bo peydabîna huzûrê; êmnahî û tenahiyê û verevandina kul û derda û hemî bela û musîbeta di dinya û axretê da, Tewhîd, îman û bawerî sebebe bo xefirandina guneha. Bi kurtî Tewhîd, îman û bawerî egere bo serferaziya dinya û axretê.

Tewhîd însanan û mirovan ji koletî û 'ebdîniya mirovan xilas diket û bi timamî û ji hemî la ve dikete 'ebdê Xudê Te'ala yê rast û durust û bi ser ferazî bi Xudê Te'ala ve girê didet.

325 Muttefequn 'eleyh
326 Muslim

Vêca divêt, îmandar her xwe bi can û dil û bizanîn di Tewhîdê werbiken û bê riyakarî ferman û emrê Xudayê Jorî bicih bînin û xwe ji wan tiştan jî dûr ragirin; ewêt ku Xudayê Jorî men'e û qedexe kirîn, çûnku mirovêt îmandar nimûne ne bo hemî xelk û 'alemê.

Ehlê Tewhîdê li hemî dera bi reng û rûbarêt xwe yêt nuran î, bi exlaq û torêt xwe yêt rehmanî di diyar û aşkirane, gelek di bêhin xweş, paqij û bijûnin, bi girnijîn û enî vekirîne û gelek di ezman xweşin û di nerm û helîmin li gel hemî mirovan, di hişyar û zanane, di teqwa û dîndarin, û ew gelek xwe ji bê-emriya Xudê Te'ala di parizin, nexasima hindî bêjî ew xwe ji wan eger û sebeba dûr radigirin; ewêt ku mirovan radikêşine nav şirkê, kafiriyê, bid'a, guneh û xirabkariya.

Herdîsa ew xwe ji riyakariyê, mezinahî û tekeburê, hîla û xapandinê, çivêlî û temsariya dûr radigirin; çûnku ew nimûnene bo ummetê, ew gelek bi wijdan û însafin; xwe ji hemî tiştêt heram û bi şik û şuphe dûr radigirin, ew gelek li soz û 'ehdêt xwe di hişyarin û dixwe şermin, ew di hemî gotin, şol û karêt xwe da dixalis û muxlisin, di rast û durust in, ew di merd û xêrxwazin bi rehim û merhemetin, di wêrek û bistehin, di zîrek û çespanin, gelek dimêrxas û hindî bêjî bi cur'etin.

Bi Tewhîdê mirovê îmandar di dinayê da ji bilî kar û 'emelê axretê, ew gelek tiştêt baş bi dest xwe têxît û kardiket, hindek ji wan tiştan eve ne:

- Ew bo xwe dil rihetiyê kesb û kar diket, ew her yî dil geş û keyîf xweş e; çunku pişta wî bi Xudayê Jorî ve ya girêda ye û ew bizanîn li ser rêka hîdayetê dirêjiyê didete jîn û jiyara xwe, Biheşta wî ya didilê wî da; mereqa wî hema her Tewhîde; bîr û baweriya wî ye; ew her bi şev û roj zêrevan û berevanê dînê Xudayê xwe ye li ser rêka

Pêxemberî û sihabiyêt wî; anku ew her yî beredewame li ser rêka Selefêt xwe yêt salih.

EveXudayê Jorî bi xwe jî ferman diket û dibêjît:

الَّذِينَ آمَنُوا وَتَطْمَئِنُّ قُلُوبُهُم بِذِكْرِ اللَّهِ ۗ أَلَا بِذِكْرِ اللَّهِ تَطْمَئِنُّ الْقُلُوبُ

"Hûn xwe hişyar biken û baş bizanin dil hema her bi bîr înandina navê Ellahu Te'ala tena û teser dibin."[327]

- Ew bo xwe rizqekî bi bereket kesb û kar diket. Ev e Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

وَأَن لَّوِ اسْتَقَامُوا عَلَى الطَّرِيقَةِ لَأَسْقَيْنَاهُم مَّاءً غَدَقًا

"Nê heke ew xwe li ser rêka heq qayim ragirin, em da aveka gelek xweş bo wan hinêrîn û deyne wan."[328]

- Ew ji tepk û davêt neyara êmin dibît, nexasima yêt nefsê û şeytanî û heval bendêt wan; anku ji hemî dujmin û neyara. Ev e Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

وَإِنْ تَصْبِرُوا وَتَتَّقُوا لَا يَضُرُّكُمْ كَيْدُهُمْ شَيْئًا

"Nê heke hûn bi sebir û hedar xwe ragirin; xwe biparêzin ji bê-emriya Ellahu Te'ala qet hîle û lêhbêt wan çu zererê nagehîne hewe."[329]

-Ew bo xwe Biheştê qazanç û kardiket. Ev e Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ قَالُوا رَبُّنَا اللَّهُ ثُمَّ اسْتَقَامُوا تَتَنَزَّلُ عَلَيْهِمُ الْمَلَائِكَةُ أَلَّا تَخَافُوا وَلَا تَحْزَنُوا وَأَبْشِرُوا بِالْجَنَّةِ الَّتِي كُنْتُمْ تُوعَدُونَ

327 Sûreta Rad 28
328 Sûreta Cin 16
329 Sûreta Al 'Îmran 120

“Bê şik ewêt dibêjin: “Rebbê me hema her Ellahu Te‘ala bitinê ye, me ji dil îman û bawerî ya bi Wî înandî ” û paşê ew xwe li ser rêk û rêbaza şerî‘etê Wî qayim radigirin, milyaket li demê ew dikevne ber sekerata mirnê ref bi ref dê êne nik wan û dê bêjne wa: “Qet hûn netirsin û xemgîn nebin mizgînî bi wê Biheştê bo hewe bît; ewa ku ‘ehd û soz bo hewe pê hatiye dan.”[330]

- Ew bo xwe malbateka gelek mezin kar diket, ehlê Tewhîdê çî mirovêt wî bin yan jî yêt dûr û nêzîk wî bin hemî dibine birayêt wî yêt îmanê.

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ إِخْوَةٌ فَأَصْلِحُوا بَيْنَ أَخَوَيْكُمْ وَاتَّقُوا اللَّهَ لَعَلَّكُمْ تُرْحَمُونَ

“Bê şik îmandar hemî birayêt êkin (anku yêt îmanê ne. Vêca hûn navbeyna hemî birayêt xwe her bi sulhê û pêkhatinê xweş biken. Hûn ji Ellahu Te‘ala bitirsin; (bêemriya Wî neken), da ku rehm bi hewe bête birin.”[331]

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- dibêjît: Xudê Te‘ala ‘Ezze We Celle, dibêjît: Viyan û hejêkirna Min ya wacib bî bo wan kesa; ewêt ku jiber Min hej êkûdu

diken, ewêt serxatira Min li dev êkûdu dirûne xwarê, ewêt serxatira Min sera êkûdu diden û ewêt serxatira Min xêr û sedeqa diden.

330 Sûreta Fussîlet 30
331 Sûreta Hucurat 10

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَالْمُؤْمِنُونَ وَالْمُؤْمِنَاتُ بَعْضُهُمْ أَوْلِيَاءُ بَعْضٍ يَأْمُرُونَ بِالْمَعْرُوفِ وَيَنْهَوْنَ عَنِ الْمُنكَرِ وَيُقِيمُونَ الصَّلَاةَ وَيُؤْتُونَ الزَّكَاةَ وَيُطِيعُونَ اللَّهَ وَرَسُولَهُ أُولَئِكَ سَيَرْحَمُهُمُ اللَّهُ إِنَّ اللَّهَ عَزِيزٌ حَكِيمٌ

“Zelamêt îmandar û jinkêt îmandar hemî pêk ve her harîkar û piştevanêt êkûdune, ew her emrê bi kirna başî û qenciya diken û rê li ber kirna xirabî û nebaşiya digirin û ew her bi rast î û durustî nivêjan diken û ji dil zekatê ji malê xwe diden û ew her bi gotina Ellahu Te‘ala; Qur’ana kerîm û bi hedîsêt Pêxemberê Wî yêt rast û durust ‘emel diken. Ellahu Te‘ala dê rehmê bi van bet. Bê şik Ellahu Te‘ala, yî xurt û jêhatî ye û yî xudan hîkmet e; (di hemî kar û kirin û gotinêt xwe da).”[332]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَٱلَّذِينَ جَاءُوا مِن بَعْدِهِمْ يَقُولُونَ رَبَّنَا ٱغْفِرْ لَنَا وَلِإِخْوانِنَا ٱلَّذِينَ سَبَقُونَا بِٱلإِيمَانِ وَلاَ تَجْعَلْ فِى قُلُوبِنَا غِلاً لِّلَّذِينَ ءامَنُوا رَبَّنَآ إِنَّكَ رَءُوفٌ رَّحِيمٌ

“Ew îmandarêt piştî wan Muhacir û Ensariya jî rabîn û hatîn, ew her dibêjin: “Ey Rebbê me! Tu gunehêt me û yêt wan birayêt me jî; ewêt ku diber me ra kirî (û berî me) îman û bawerî înandî ‘efû bike. Tu çu nevyan û kînê nehêle di dilê me da bo wan; ewêt îman û bawerî înandî. Ey Rebbê me! Bê şik tu, bo ‘ebdêt xwe gelekî bi şefqetî û yî birehm û merhemet î.”[333]

332 Sûreta Tewbe 71
333 Sûreta Heşr 10

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- dibêjît:

Êk ji hewe heta ka wî çî bo ruha xwe bivêt û bixwazît, ew wê bo birayê xwe yê Busulman jî, anku heta ew wan tiştêt wesa bo wî birayê xwe jî nexwazît û hezneket, ew nabîte xudan îman û bawerî; wî îman û bawerî ne înandî ye.[334]

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- dibêjît:

Yê îmandar bo birayê xwe yê îmandar, her wekî berêt rêza dîwarîne; ew wesa êkûdu qaîm û zeft diken; (anku ew her li êkûdu dihişyarin ji hemîla ve).[335]

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- dibêjît:

Metela îmandaran di hejê kirna wan da, di rehim û merhemeta wan da bo êkûdu, her wekî metela bedena mirovekiye; li demê e'zayekî bedena wî mirovî biêşît, xew li xudanê wê bedenê bi timamî vedherimît ji ber êşa wî e'zayî û lê dibîte girik û ta (anku divêt, ehlê îmanê wesa di xem xwerbin bo êkûdu).[336]

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- dibêjît:

Ey Busulman! Tu hema her têkilî û hevalîniya îmandaran bitinê bike û xwarna te (ya bi muhebet) çî li mal yan li kîrê bît, bila hema her îmandar bitinêi bi xwen û bide wan bitinê.[337]

Hej berê da ya hatiye gotin: Mirov bi serê xwe bitinê yî kême, belê, bi heval û hogirêt xwe ve gelek e.

334 Buxarî
335 Muslim
336 Ev hedîs e Îmamê Ehmed ya rîwayet kirî, Zanayê mezin Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya Hesen e
337 Ebu Dawud û Tirmizî

Ew ‘emel; şol û karêt ku heke mirov jê tobe neket Xudayê Jorî li roja qiyametê mirovî pê dibete Cehnemê, bi kurtî ew eve ne:

1-Şîrk e.

2-Kafirî ye.

3-Bîd‘et in.

4-Guneh in.

Twehîd û îman û baweriya îmandarê rast û durust, bi aneha Xudayê Jorî dê wî ji van he rçar astengêt giran; ewêt ku me gotîn dê sitare û muhafize diket.

# EW TİŞTÊT TEWHÎDÊ XİRAB Û BETAL DİKEN

Divêt, yê Busulman her dem û gavê li Tewhîda xwe; îman û bîr û baweriya xwe yî hişyar bît; xwe dûr û paqij ragirît ji hemî ne‘wêt şîrkê, kafiriyê, bîd‘a û guneha.

Xudê neket heke yê Busulman bikevîte nav şîrkê û kafiriyê, ev e ji layê îmanê da, ew kete nav tehlîkeyeka gelek mezin û giran, mala wî xirabû; çunku şîrk û kafirî bi zidê Tewhîdê ne, şîrk û kafiriya mezin û Tewhîd li gelêk û pêk ve qet çû caran li dev kesekê kom nebîne û kom nabin jî.

Belê heke yê îmandar bikevîte nav bîd‘e û guneha ji kemala Tewhîdê dûr dikevît, belê Xudê neket heke bîd‘e û guneh xelebetê lê biken û li dev wî mezin bibin û serî ji wî bistînin; hîngê bo îmana wî tehlîkeyeka gelek girane; çunku her bîd‘e û guneha hebît xudanê xwe hêdî hêdî radikêşîte nav şîrkê û kafiriya mezin.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمِنَ النَّاسِ مَنْ يَقُولُ آمَنَّا بِاللَّهِ وَبِالْيَوْمِ الْآخِرِ وَمَا هُمْ بِمُؤْمِنِينَ

“Hindek ji mirovan yêt heyîn, ew dibêjin: “Me, îman û bawerî ya înandî bi Ellahu Te‘ala û roja qiyametê” belê, ne we ye; ew ne di-îmandar in (wa îman û bawerî neînandiye).”[338]

Vêca yê Busulman bi bawerkirîn, gotin û kirna gelek tiştan dixirhît; ji dînî derdikevît û dibîte muşrîk û kafir dibît!

---

338 Sûreta Beqer e 8

Şirî‘et dibêjîte van tiştan:

«Newaqidul-îslam»

Gelek tişt Tewhîdê; îman û baweriyê li dev mirovî betal diken û dişkînin, nihe em dê bo agehdarî û hişyarî çendeka ji wan newaqidêt Îslamê bi reqem nivîsîn û rêzkeyîn:

1-Ew kes dê bîte muşrîk yê ku di gel kirna ‘îbadetî bo Xudayê Jorî şirîk û hevala bo Wî çêket.

Şîrk guneheka gelek mezin e, çunku yê muşrîk; Ew ê ku şirîk û hevala bo Xudayê Jorî çêdiket, ew me‘budî û ‘abida (anku ew Xudayê Jorî û mirovan) şitî êk hisab diket, haşa ew Xudayê Jorî tînîte rêza ‘ebda yan ‘ebda di bete rêza Xudayê Jorî!

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ اللَّهَ لَا يَغْفِرُ أَن يُشْرَكَ بِهِ وَيَغْفِرُ مَا دُونَ ذَٰلِكَ لِمَن يَشَاءُ ۚ وَمَن يُشْرِكْ بِاللَّهِ فَقَدِ افْتَرَىٰ إِثْمًا عَظِيمًا

“Bê şik Ellahu Te‘ala, qet wî kesî ‘efû naket; Ew ê ku şirîk û hevkûfan bo Wî digirît û çêdiket, belê gunehêt ji bilî şîrkê bo wî yê ku Ew hez biket, Ew ‘efû diket. Heçî kesê şirîk û hevkûfan bo Ellahu Te‘ala çêket bi sûnd, ev e wî ji bêbextî guneheka gelek mezin kir.”[339]

Belê Xudayê Jorî di vê ayetê da hukmê ayeta borî rohn û aşkira diket û dibêjît:

339 Sûreta Nîsa 48

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِنِّي لَغَفَّارٌ لِّمَن تَابَ وَآمَنَ وَعَمِلَ صَالِحًا ثُمَّ اهْتَدَىٰ

“Bê şik Ez gelekî ‘efûkerim bo wî yê ku tobe biket û îman û baweryê bînît, kar û ‘emelêt baş biket û paşê jî xwe qayim ragirît li ser rêka heq û rast.”[340]

Anku heçî kesê şirîk û hevkûfan bo Ellahu Te‘ala çêket, heke ew bi saxiya xwe jê tobe biket Ellahu Te‘ala dê wî kesî jî ‘efû ket.

2- Ew kes dê bîte muşrîk; yê ku wasîta û navbeynciya di navbeyna xwe û Xudê Te‘ala bigirît û çêdiket, da ku Xudê Te‘ala serxatira wan; wan ji gunehêt wan ‘efû biket, wan ji xirabî û nexweşiya sitare biket, da ku du‘a û hûviyêt wan qebûl biket, da mirad û daxwazêt wan hasil bin ev e wekî; şîfayê, ‘eyalî nexasima daxazkirna kura...

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ تَدْعُونَ مِنْ دُونِ اللَّهِ عِبَادٌ أَمْثَالُكُمْ فَادْعُوهُمْ فَلْيَسْتَجِيبُوا لَكُمْ إِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ

“Bê şik ew tiştêt hûn ji bilî Ellahu Te‘ala ‘îbadetî bo diken ew jî hema her wekî hewe mexluqatêt Ellahu Te‘ala ne, dê pa heke hûn rast dibêjin hûn gazî wan biken; bila ew cewaba hewe biden û bila di hawara hewe bên.”[341]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ إِنَّمَا أَدْعُو رَبِّي وَلَا أُشْرِكُ بِهِ أَحَدًا

340 Sûreta Ta ha 82
341 Sûreta E‘raf 194

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje: "Ez hema her ji dil 'îbadet û ta'etî bo Rebbê xwe bitinê dikem û qet ez çu tiştan û kesekê bo Wî nakeme şirîk û hevkûf."[342]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلاَ تَدْعُ مِن دُونِ اللّهِ مَا لاَ يَنفَعُكَ وَلاَ يَضُرُّكَ فَإِن فَعَلْتَ فَإِنَّكَ إِذاً مِّنَ الظَّالِمِينَ

"(Ey Muhemmed!) Qet çû caran tu ji bilî Ellahu Te'ala bo xwe du'a ji kesekê û ji wan tiştan neke; ewêt ku neşên çu fayde û zererê bigehîne te. Vêca heke te ew tişt kir, bê şik ev e hîngê tu jî dê biye ji mirovêt zalim (anku ji muşrîkan)."[343]

Xudê Te'ala dibêjît:

فَلَا تَدْعُ مَعَ اللَّهِ إِلَهاً آخَرَ فَتَكُونَ مِنَ الْمُعَذَّبِينَ

"Vêca tu li gel Ellahu Te'ala 'îbadetî bo çu xudayêt dî neke, heke tu dê biye ji wan; ewêt ku têne 'ezabdan!"[344]

Belê ya rast eve ye; mirovêt vî zemanî; nexasima ewêt ku xwe dîndar û baş dizanîn, bahra pitir ji wan bi î'tîqada xwe; anku bi bîr û baweriya xwe, bi gotin û kirnêt xwe, xwe têxine di nav şîrka mezin û bûçûk û kafiriyê da, belkî ew nuzanin yan hema ew xwe tênagehîn yan jî wan nevêt bizanin ji ber rex û doranêt xwe, nê ev hinde ya pêşçav û aşkira ye bo her kesekê; xaseten ji bo wan; ewêt ku hişyar bîn ji xewa xefletê; ewêt ku 'eqîda Selefêt Salih ('eqîda ehlê Hedîsê) zanî û fehim kirî û pê 'emel diken.

342 Sûreta Cin 20
343 Sûreta Yûnus 106
344 Sûreta Şu'era 213

Berê xwe bidenê ew çewa yê bi hereboşî û pêkve; zelam û jinik di navêk da bi wê xemlê û wan çilkêt ‘elmode ve diçine seredana goristan û meqbera û ser û nezra li ser serjêdiken û ew bo mirad û meqsedêt xwe hawar dikene mirya û wan bo xwe dikene wasîta di navbeyna xwe û Xudayê Jorî da; bo qebûlkirna du‘a û mirad û meqsedêt xwe!

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَالَّذِينَ اتَّخَذُوا مِنْ دُونِهِ أَوْلِيَاءَ مَا نَعْبُدُهُمْ إِلَّا لِيُقَرِّبُونَا إِلَى اللَّهِ زُلْفَى

“Ewêt ji bilî Ellahu Te‘ala bo xwe hinde dost û piştevana digirin, ew yê dibêjin: (Em yê ‘îbadetî bo van (pût û meqbera) dikeyn (û xwe tavêjîne ber pêt wa); da ku ew baş me nêzîkî Ellahu Te‘ala biken û da ji ber wan du‘ayêt me qebûl bibin).”[345]

Nê ew kesêt wasîta di navbeyna xwe û Xudayê Jorî da digirin û çêdiken, haşa ew bi vê hindê Xudayê Jorî dişûphîne mezin û serokêt dinyayê; reîs û rêvebera û wekî wan hisab diken! Ew dibêjin, haşa bidevê wan bît: Nê ji ‘erdî heta ‘esmanan dest di ser destî ra ye, anku ew dibêjin eva em dikeyn ya durust e, haşa!

Ew dibêjin: Ka çewa gava şola mirovî kete dev rêveber û mezinekî dinya yê, divêt, mirov êkî anku wasîteyekî birêkete dev wî da ku ew şola mirovî çêket.

‘Eynen her wesa jî divêt, em wasîteyekî di navbeyna xwe û Xudayê Jorî da jî bigrîn, çunku em digunehkarin; da ku Xudayê Jorî ser xatira wî / wan qenc û çaka me ‘efû biket û du‘ayêt me qebûl biket.

345 Sûreta Zumer 3

Te dît heta hindeka ji wan, li berahîka du‘ayêt xwe got: Ey Xuda tu bo xatra çilhizar pêxemberêt xwe yêt rawistayi key, tu bo xatra dîwana qencêt xwe key, tu bo xatra filan welî û şêxî key …Tu vê du‘a û mirada min bo min qebûl bike! Ev e xeletiyeka gelek mezin e çûnku şîrk e!

Rast e di dinyayê da wasîte têne girtin; çunku mezinêt dinyayê; amir û me’mûr di hemî ezmanan nagehin yan ser xatira wî kesî dê şola wî kesî çêket; çî jiber wergitna bertîla yan dê ji wî tirsît yan jî ji ber hinde tiştêt dî.

Haşa ma Xudayê Jorî jî wekî wan ‘ebda ye?!, nexêr, Xudayê Jorî di hemî ezmanan digehît û Ew dizanît ka kî yî heqe û ka kîjik jî yî neheqe, Ew çu rişwet û bertîla jî qebûl naket û wernagirît û qet Ew ji kesekê jî şerim naket û natirsît. Vêca nehewce ye mirov di navbeyna xwe û Xudayê Jorî da çu wasîta bigrît.

Nê bi girtina wasîta haşa mirov Xudayê Jorî tînîte rêza ‘ebdêt gunehkar û wekî mirovekî hisab diket, eha jiber vê hindê; yê di navbeyna xwe û Xudayê Jorî da wasîta digirît û çêdiket ew dê bîte muşrîk û kafir dibît.

3-Ew kes dê kafir bît yê ku Cuhî û Fila kafir nezanît yan yê muşrîkan; ewêt ku şirîk û hevala bo Xudayê Jorî çêdiken red û înkar neket yan jî yê bi şik û guman bikevît di kafiriya kafiran da anku di kafiriya Cuhî, Fila û muşrîkan, agirperês, dînsiz û qomunîsta da û ewêt wekî wan jî, yan jî yê bêjît: Nuza ka ew kafir in an ne, yan jî yê bîr û baweriyêt wan û rêk û rêbazêt wan baş û law bizanît.

Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: “Ez bi wî xudayî keme yê ku ruha min di destê wî da heçiyê ji vê ummetê (meqset pê ummeta de‘wê ye) anku çî Cuhî yan File (yan heçî kafirêt hebin) heke ku ew bi min hesha bin û wan zanîbît ku Xudê Te‘ala ez yê hinartîm û kirîm e

pêxemberê axirê zemanî û paşê ew îman û baweriyê bi min û wî tiştî ne înin yê ku Xudayê Jorî ez pê hinartîm îlleh ew dê bine ehlê Cehnemê.[346]

Se‘îdê kurê Cubeyrî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Nê li ser rastiya wê ev ayeta kitêba Ellahu Te‘ala dibêjît:

وَمَنْ يَكْفُرْ بِهِ مِنَ الْأَحْزَابِ فَالنَّارُ مَوْعِدُهُ

“Heçî kesê ji wan kom û bira (ewêt ku kafir bîn) heke ew îman û baweriyê ne înin bi vê Qur’anê û ew înkara wê biken, agirê Cehnemê yê li hîviya wan, û ew der cih û warê wa ye.”[347]

Me‘na vê hedîsê ji wê ayetê bi mecbûrî ya mutewatire.[348]

Anku ev hedîse behsê hemî kafiran diket; ewêt ku piştî hatina Pêxemberî-selat û selam li ser bin- naên îman û baweriyê bi dînê Îslamê naînin û qebûl neken.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَقَالَتِ الْيَهُودُ عُزَيْرٌ ابْنُ اللَّهِ وَقَالَتِ النَّصَارَى الْمَسِيحُ ابْنُ اللَّهِ ۖ ذَٰلِكَ قَوْلُهُم بِأَفْوَاهِهِمْ ۖ يُضَاهِئُونَ قَوْلَ الَّذِينَ كَفَرُوا مِن قَبْلُ ۚ قَاتَلَهُمُ اللَّهُ ۚ أَنَّىٰ يُؤْفَكُونَ

“Cûhya got: ‘Uzeyr kurê Ellahu Te‘ala ye (haşa) û Fila jî got: “ ‘Îsa kurê Ellahu Te‘ala ye, haşa.” Eha ev e, gotina wa ye û ew yê bi devê xwe vê dibêjin. Ev e, ew yê zehrî gotina wan vedken; ewêt ku li berî wan kafir bûn.

Ellahu Te‘ala wan bikujît, erê ma çewa ew berê xwe ji heqiyê werdigêrin?”[349]

346 Muslim
347 Sûreta Hûd 17
348 El-Îrşad îla sehîh el-Î ‘tiqad ya Salihê kurê Fewzanî
349 Sûreta Tewbe 30

4-Ew kes dê bîte muşrîk; yê ku bi bîr û bawerî; bawer biket û bêjît: Rêbaz û rêkeka dî, ji bilî rêka şirî‘etî; anku ji bilî wê rêka Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- pê hatî ya baştir û durustir e yan yê bêjît: Hukum û ehkamêt hindekêt dî ji wan hukum û ehkama dibaştirin û çêtir in;

Ewêt ku Pêxember-selat û selam li ser bin- pê hatî, ev e wekî wan; ewêt ku hukmê taxuta di ser hukmê Xudê Te‘ala ra digirin, yan ewêt ku bawer diken û dibêjin; ew rêbaz û rêk jî her wekî wê rêka Xudê Te‘ala Pêxemberê xwe pê hinartî di rast in yan jî bawer biket û bêjît: Durust e ku ji bilî hukum û ehkamêt dînê Îslamê; ewêt ku Xudê Te‘ala hinartîn, di nav mirovan da hukum bi hinde qanûnêt dî yêt destçêker bête gêran û kirin!

Xudê Te‘ala dibêjît:

أَفَحُكْمَ الْجَاهِلِيَّةِ يَبْغُونَ وَمَنْ أَحْسَنُ مِنَ اللَّهِ حُكْمًا لِقَوْمٍ يُوقِنُونَ

“Erê ma ew bo xwe li hukm; dest û dara cahiliya berê digerhin û daxwaz diken!? Erê, ma hukmê kê ji hukmê Ellahu Te‘ala yî çêtir û baştir e bo wan, ewêt ku dizanin û qena‘et pê hey?!”[350]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِذَا قِيلَ لَهُمْ تَعَالَوْا إِلَى مَا أَنْزَلَ اللَّهُ وَإِلَى الرَّسُولِ رَأَيْتَ الْمُنَافِقِينَ يَصُدُّونَ عَنْكَ صُدُودًا

“Û demê bo wan tête gotin, dê hûn werne nik wê Qur’anê ya ku Ellahu Te‘ala hinartiye xwarê û werne nik Pêxemberî; (da şerî‘etê hewe biket), te bi xwe ew minafiq didîtin ku ka çewan, wan xwe dida paş û ji te direvîn û dûr diketin.”[351]

350 Sûreta Maîde 50
351 Sûreta Nîsa 61

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَنْ لَمْ يَحْكُمْ بِمَا أَنْزَلَ اللّٰهُ فَأُولَئِكَ هُمُ الْكَافِرُونَ

“Heçî kesê hukmî bi wê neket ya ku Ellahu Te‘ala bi rêka wehyê hinartiye xwarê anku bi Qur’anê, eha hema her ew in yêt kafir.”[352]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَلَا وَرَبِّكَ لَا يُؤْمِنُونَ حَتَّى يُحَكِّمُوكَ فِيمَا شَجَرَ بَيْنَهُمْ ثُمَّ لَا يَجِدُوا فِي أَنْفُسِهِمْ حَرَجًا مِمَّا قَضَيْتَ وَيُسَلِّمُوا تَسْلِيمًا

“Nexêr, (ey Muhemmed!) Ez bi Rebbê te sûnd dixwem, ew nabine xudanêt îman û baweryê (Busulman nabin) heta ku ew li ser îxtîlaf û cirûbirêt xwe te nekene hekem di navbeyna xwe da û paşê divêt, ew li hemberî wî hukmî (û şerî‘etî) jî yê ku te kirî jî çu dil giraniyê di dilê xwe da nebînin, û divêt, ew bi teslîmbîniyeka timam jî wî hukmî (şerî‘etî) yê ku te kirî qebûl biken û ji hemî la ve pê dirazî bin jî.”[353]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا كَانَ لِمُؤْمِنٍ وَلَا مُؤْمِنَةٍ إِذَا قَضَى اللّٰهُ وَرَسُولُهُ أَمْرًا أَنْ يَكُونَ لَهُمُ الْخِيَرَةُ مِنْ أَمْرِهِمْ وَمَن يَعْصِ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ فَقَدْ ضَلَّ ضَلَالًا مُّبِينًا

“Qet‘iyen durust nîne bo çu zelamêt îmandar û jinkêt îmandar li demê ku Ellahu Te‘ala û Pêxemberê Wî li ser tiştekî hukmek da, ew rabin bo xwe wê hilbijêrin û biken ya ku dilê wan dixwazît. Heçî kesê bê-emriya Ellahu Te‘ala û Pêxemberê Wî biket (anku

352 Sûreta Maîde 44
353 Sûreta Nîsa 65

şerî‘etî qebûl neket), bê şik ew xirha bixirhaneka aşkira (û ji rêka heq û rast dûr ket).”[354]

Îmamê Şenqiytî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Heçî kesê di hukmî da (anku yê bi şerî‘etê Îslamê neket) ev e heçwekî wî di ‘îbadetî da şirîk bo Xudê Te‘ala çêkirîn.[355]

5- Ew kes dê kafir bît yê ku kerbêt wî ji êkî ji wan tiştan vebin; ewêt ku Pêxember -selat û selam li ser bin- pê hatî û hejê neket, çenda ku ew pê ‘emel jî biket, bo nimûne; ev e her wekî wî kesî yê ku bi nevyan û ‘acizî ve zikatê didet yan jî yê nivêjê diket û kerbêt wî jê vedbin…

Eha ev e ji ber hindê ew dixirhît û kafir bît.

Xudê Te‘ala dibêjît:

ذَلِكَ بِأَنَّهُمْ كَرِهُوا مَا أَنْزَلَ اللَّهُ فَأَحْبَطَ أَعْمَالَهُمْ

“Çûnkî wan hej wê Qur’anê nedikir; ewa ku Ellahu Te‘ala hinartiye xwarê. Vêca Ellahu Te‘ala kar û ‘emelêt wan hemî ji binî betal û pûç kirin.”[356]

6- Ew kes dê kafir bît yê ku ezmanê xwe diderheqa Xudayê Jorî û Pêxemberê wî da dirêj biket; yê ku haşa yarî û tirana bi Xudayê Jorî yan bi Pêxemberê wî biket yan yê yarî û tirana bi bedela xêra hinde kar û ‘emela biket yan cizayê hinde guneha biket; ewêt ku Xudayê Jorî we‘de pê dayîn yan jî yê yarî û tirana bi tiştekî ji dînî anku ewêt ku Pêxember pê hatî û gotîn biket ew dê xirhît û kafir bît.

354 Sûreta Ehzab 36
355 Ji Tefsîra; Edwaulbeyan
356 Sûreta Muhammed 9

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ أَبِاللَّهِ وَآيَاتِهِ وَرَسُولِهِ كُنْتُمْ تَسْتَهْزِئُونَ لَا تَعْتَذِرُوا قَدْ كَفَرْتُمْ بَعْدَ إِيمَانِكُمْ

“(Ey gelî minafiqêt durû!) Qet hûn çu hêceta negirin, bê şik piştî hewe îman û bawerî înandî hûn yêt kafir bin.”[357]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَقَد قَالُواْ كَلِمَةَ ٱلكُفرِ وَكَفَرُواْ بَعدَ إِسلَٰمِهِم

“Bi sûnd, wan gotina kafiryê ya gotî; ew piştî Busulman bîniya xwe yêt kafir bin.”[358]

Vêca weyîl li halê wî kesî yê ku yarî û tirana bi dînê Xudayê Jorî diket; ev e wekî nivêjê û Rojiya û dana zikatê yan yê yarî û tirana bi rîha û cilkêt jinkêt Busulman biket, ew kes dê xirhît û kafir bît.

7- Ew kes dê kafir bît yê ku xwe bi ‘elimînîte sêhrbaziyê yan yê sêhrbaziyê nîşahindeka bidet, yan jî yê keyfa wî bi sêhrbaziyê û sêhrbaza bêt, çunku yê sêhrbaz bi harîkariya şeytana, bi hinde hîlêt nepenî û xapandina mejî û dilêt mirovan; heta ew piştî destûrdana Xudayê Jorî dişên mirovan bi sêhrbaziyêt xwe bikujin, nisax biken, jin û mêra jêk kûvî biken yan hindeka bi dûv hindeka bêxin û hindeka mejî reş biken; har û dîn biken, nê eha ji ber vê hindê mirovêt sêhrbaz dixirhin û kafir dibin.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا يُعَلِّمَانِ مِنْ أَحَدٍ حَتَّى يَقُولَا إِنَّمَا نَحْنُ فِتْنَةٌ فَلَا تَكْفُرْ

357 Sûreta Tewbe 66
358 Sûreta Tewbe 74

“Belê wan her du milyaketa bi xwe, li demê (li ser şiklê mirovan) sêhirbazî nîşa xelkê dida, wan digote xelk û ‘alemê: “Hişyar bin xelet têneg ehin; sêhirbazî ya heram e, xwe bi ‘elimandina wê kafir neken.”[359]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا كَفَرَ سُلَيْمَانُ وَلَكِنَّ الشَّيَاطِينَ كَفَرُوا يُعَلِّمُونَ النَّاسَ السِّحْرَ

“Qet Sileyman Pêxemberî bi xwe, kafirî nekirye û ew ne yî kafir bû. Belê, hema, şeytana kafirî dikir û ew dikafir bin; çûnku wan sêhirbazî û ew tiştê li Babilê (li ‘İraqê) bo wan her du milyaketa; (anku bo Harûtî û Marûtî hatî şeytana ew sêhirbazî nîşa xelkê dida da ku pê xirabiyê biken).”[360]

Sê ji sihabiyêt Pêxemberî-selat û selam li ser bin-: Anku

Umerê kurê Xettabî, kabaniya Pêxemberî Hefsa kiça Umerî û Cundib (Xudê ji wan hemyan razî bît) ew dibêjin: Divêt, yêt sêhirbaziyê diken hema di cih da bêne kuştin bêmuhlet dan.

8- Ew kes dê kafir bît yê ku harîkariya mûşrik û kafiran biket li hemberî Busulmana û yê wan bo xwe bikete dost û heval û bi kîn û ‘edawet berê xwe bidete Busulmana, yan jî yê dibîte endamê wan komele û partiya Ewêt; ku dujminatiya Xudê Te‘ala diken; ewêt ku bi ziddê dînê Îslamê, vêca yê destekê bidete wan û yê bi keyfa dilê xwe û bête‘dayî xwe bidete li gel wan û hej wan biket, ew kes jî hiştî wan dê xirhît û kafir bît.

359 Sûreta Beqer e 102
360 Sûreta Beqer e 102

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا لَا تَتَّخِذُوا الْيَهُودَ وَالنَّصَارَى أَوْلِيَاءَ بَعْضُهُمْ أَوْلِيَاءُ بَعْضٍ وَمَنْ يَتَوَلَّهُمْ مِنْكُمْ فَإِنَّهُ مِنْهُمْ إِنَّ اللَّهَ لَا يَهْدِي الْقَوْمَ الظَّالِمِينَ

“Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Qet hûn çû caran Cûhî û Fila bo xwe nekene dost û piştevan, nê hema her ew bitinê dost û piştevanêt êkûdune. Heçî kesê ji hewe (ji evroke pê ve) wan bo xwe bikete dost û piştevan, bê şik ew jî ji wan e. Bê şik Ellahu Te‘ala, qewmê zalim û zordar naînîte ser rêka heq û rast.”[361]

Vêca yê bi hejêkirna xwe, bi ruha xwe, bi malê xwe bi navê xwe û li demê hilbijartina bi dengê xwe yan bi çî rêka hebît û bi çî tiştê hebît harîkariya dujminêt dînî Îslamê biket ew dê xirhît û kafir bît.

9- Ew kes dê kafir bît; yê ku bibawer kirin bêjît: Hinde welî yan şêx dişên ji nav şerî‘etê Muhemmedî -selat û selam li ser bin- derkevin anku hinde tiştan ji wan biken; ewêt ku şirî‘et qebûl neket. Ev e her wekî Xidir (Silav li ser bin) ji nav şerî‘etê Mûsa Pêxemberî-Selam li ser binderketî, ew kes dê kafir bît.

10- Ew kes dê kafir bît; yê ku pişta xwe bidete dînê Xudayê Jorî û rûyê xwe jê badet; xwe ne ‘elimînîtê û pê ‘emel neket û ew bi timamî ji dînî derdkevît; di xirhît û kafir dibît.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَنْ أَظْلَمُ مِمَّنْ ذُكِّرَ بِآيَاتِ رَبِّهِ ثُمَّ أَعْرَضَ عَنْهَا إِنَّا مِنَ الْمُجْرِمِينَ مُنْتَقِمُونَ

361 Sûreta Maîde 51

"Ma kî ji wî yî zalimtire; yê ku ayetêt Rebbê wî bo têne xwandin (da ku bêne bîrê) û paşê ew pişta xwe bidetê û pûte pê neket? Bê şik Em dê tol û heyfê ji gunehkarêt sûçdar vekeyn û hilînîn."[362]

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِآيَاتِ اللَّهِ لَا يَهْدِيهِمُ اللَّهُ وَلَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ

"Bê şik ewêt îman û baweriyê naînin bi ayetêt Qur'ana Ellahu Te'ala, qet'iyen Ellahu Te'ala wan naînîte ser rêka heq û rast û bo wan 'ezabeka gelek biêş û jan jî ya hey."[363]

Vêca heçî kesê êkê ji van tiştan biket; evêt ku me berî nihe gotin çî bi micidî û ji dil yan bi yarî û tirane yan jî ji tirsa wê hîndê ku dê malê wî û mensebê wî jê êne sitandin, qet çu ferq nîne di kirna van tiştan da; bi çî şiklî ji van bît ew kes ji dînî derdikevît û dikevîte nav şîrk û kafiriyê.

Belê ew kes têne; yê ku te'dayî lê têt e kirin û bi kuştinê gef û gur lê têne kirin li ser kirna van tiştan û dilê wî bi xwe jî yî tijî îman û bawerî, ev e ew tê ne Xudayê Jorî haj 'uzra wî ya hey.

Xudê Te'ala dibêjît:

مَنْ كَفَرَ بِاللَّهِ مِنْ بَعْدِ إِيمَانِهِ إِلَّا مَنْ أُكْرِهَ وَقَلْبُهُ مُطْمَئِنٌّ بِالْإِيمَانِ وَلَكِنْ مَنْ شَرَحَ بِالْكُفْرِ صَدْرًا فَعَلَيْهِمْ غَضَبٌ مِنَ اللَّهِ وَلَهُمْ عَذَابٌ عَظِيمٌ

"Heçî kesê piştî îman û bawerî înandî înkara Ellahu Te'ala biket û kafir bibît, ev e ji bilî wî; Ew ê ku te'dayî lê hatiye kirin û dilê wî tijî îman û bawerî, belê heçî kesê (piştî îman înandî) dilê xwe bo kafiryê veket (û ji dil pê

362 Sûreta Secde 22
363 Sûreta Nehl 104

xweş bibît), eha xezeba Ellahu Te'ala ya li ser wan û bo wan 'ezabeka gelek mezin jî ya hey."[364]

Mirov bi kirin û gotina gelek tiştêt dî jî; ewêt ku bi ziddê şerî'etê dînê Îslamêne dixrhît û kafir dibît.

Çûnku hindî tişt; kar û barêt dînê Îslamê pê hatî nexasima hukum û ehkamêt şirî'et pê hatî; ew hemî diheqin û heqîqetin; qet çu tiştêt bêy hikmet û beyhude di nav da nînin, lewma mirov bi van noqta; anku bi van kirin û gotina; ewêt ku bi zidê şirî'etîne kafir dibît.

364 Sûreta Nehil 106

# TAXUT

Her tiştê ji bilî Xûdê Te‘ala new‘ekî ji wan new‘êt ‘îbadetî ewêt divêt, hema her bes bo Xûdê Te‘ala bête kirin çûnku ew ‘îbadet her hema heq’ê Wî bi tinine, vêca heke

hindek rabin bi keyfa xwe û riza dilê xwe û bê te‘dayî new‘ekî ‘îbadetî bo wan tiştan biken; anku wan tiştan biperêsin û bihebînin, ew tişt hemî dibine taxut; çî ew tişt bi ruh bin yan di bêruh bin, mirov bin yan jî ne mirov bin, diqenc bin yan jî dixrab bin.

Vêca lewma wacibê jirêve Xudayê Jorî emr pê li mirovan kirî ku pê rabin; biken û bicih bînin; red û înkarkirna hemî  new‘êt taxuta ye û paşê di dûv wê hindê ra qebûl kirna Tewhîdê ye; anku îman û baweriya bi êkatitya Xudayê Jorî ye.

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَا إِكْرَاهَ فِي الدِّينِ قَد تَّبَيَّنَ الرُّشْدُ مِنَ الْغَيِّ فَمَن يَكْفُرْ بِالطَّاغُوتِ وَيُؤْمِن بِاللَّهِ فَقَدِ اسْتَمْسَكَ بِالْعُرْوَةِ الْوُثْقَىٰ لَا انفِصَامَ لَهَا وَاللَّهُ سَمِيعٌ عَلِيمٌ

“Qet çu kutekî û te‘dayî di dînî da nîne, bê şik heqî ji batilî ya hatiye aşkira kirin. Vêca heçî kesê taxûta (şeytanî, pûta, rêk û rêbazêt şaş û xelet û wan kesa ewêt ku mirovan dixirînin; ji rêka Ellahu Te‘ala dûr û varê diken) înkar û redd biket û di dûv ra îman û baweriyê bînît bi Ellahu Te‘ala, ev e wî xwe bi wê qulpa ji hemyan qayimtir ve qayim ragirt; ewa ku çû caran naqetît. Ellahu Te‘ala haj hemî deng û pêjiniya heye û yî zana ye.”[365]

365 Sûreta Beqer e 256

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَالَّذِينَ اجْتَنَبُوا الطَّاغُوتَ أَنْ يعَبُدُوهَا وَأَنَابُوا إِلَى اللَّهِ لهَمُ الْبُشْرَى

“Ewêt ku xwe ji koletiya taxût û şeytana dûr radigirin û bi tobeyeka ji dil vedgerhine bal Ellahê xwe ve, mizgînî bo wan bît. (Ey Muhemmed!) Vêca tu hema her mizgîniyê bide wan ‘ebdêt min.”[366]

Mexsed ji redd û înkarkirna taxuta eve ye; divêt, yê Busulman; îmandar bizanîn hindî tiştêt ji bilî Xudê Te‘ala têne hebandin û ‘îbadet bo bête kirin ew wan tiştan û kesa jî ewêt ku ji dev xwe bo mirovan qanûn û rêbaza çêdiken û didanin; ewêt ku ferman û emirî li mirovan diken; wekî kola têxine bin destê xwe, wan hemyan redd û înkar diket, eha hema her ev îmandare ne yî rast di îman û baweriya xwe da. Nê heta yê Busulman van hemyan ji binî redd û înkar neket, ew nabîte mû’min; xudan îman û bawerî. Ji xwe ev hinde şertê ‘ewwilî û yê jirêve ye bo qebûlbîna Tewhîdê.

Çûnku heta taxut ne êne red û înkar kirin Tewhîd; îman û bawerî li dev kesekê peyda nabît û qet kesek jî neşêt bêjît: Ez yî xudan îman û bawerî me.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلِكُلِّ قَوْمٍ هَادٍ

“Nê bo her qewmekî rêber (û pêxemberek Me yê hinartî) wî her gazî wan dikir; da ku ew bêne ser rêka hîdayetê.”[367]

366 Sûreta Zumer 17
367 Sûreta Re‘d 7

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَقَدْ بَعَثْنَا فِي كُلِّ أُمَّةٍ رَّسُولًا أَنِ اعْبُدُوا اللَّهَ وَاجْتَنِبُوا الطَّاغُوتَ

“Bi sûnd, Me bo her milet û qewmekî pêxemberek (Qasidek) yê hinartî da ku ew emrî li wan biket û bêjîte wa: “Hûn hema her ‘îbadetî û ta‘etî bo Ellahu Te‘ala bitinê biken û xwe dûr ragirin ji hemî taxûta (anku ji hemî muşrîk û kafiran; ewêt ku dizalim û zordar).”[368]

Xudayê Jorî li ser hemî mirov û ecina ya ferz kirî ku ew hemî taxuta înkar û redd biken û hema her bes îman û baweriyê bi Wî bitinê bînin û her Wî bitinê bo xwe Xuda qebûl biken û her hemî new‘êt ‘îbadetî û ta‘etî hema bes bo Wî bitinê biken û her bi gotinêt Wî û pêxemberê Wî ‘emel biken.

Xudê Te‘ala dibêjît:

أَلَمْ تَرَ إِلَى الَّذِينَ يَزْعُمُونَ أَنَّهُمْ آمَنُوا بِمَا أُنْزِلَ إِلَيْكَ وَمَا أُنْزِلَ مِنْ قَبْلِكَ يُرِيدُونَ أَنْ يَتَحَاكَمُوا إِلَى الطَّاغُوتِ وَقَدْ أُمِرُوا أَنْ يَكْفُرُوا بِهِ

“(Ey Muhemmed!) Erê, ma tu wan nabînî, ewêt ku dibêjin: “Me îman û bawerî ya înandî bi wê Qur’anê, ya bo te hatiye xwarê û bi wan kitêba jî ewêt ku berî te hatîne xwarê” belê li gel wê hindê jî, wan divêt, ew bi hukmê taxûta (anku wan muşrîk û kafiran ewêt ku dizalim û zordar û bi qanûnêt wa) bêne mehkeme kirin! Bê şik Ellahu Te‘ala, emir yê li wan kirî ku ew, wan taxûta hemyan (û mehkemêt wa) înkar û redd biken.”[369]

Gelek new‘êt taxuta yêt heyn, belê binîşe û ‘eslê hemî taxuta ji van her sê tişta ye; taxutê hukmî, taxutê ‘îbadetî

368 Sûreta Nehl 36
369 Sûreta Nîsa 60

û taxutê mutabi‘etê; anku li dûv çûn û guhdanê. taxutêt mezin eve ne:

- Taxutê mezin û yê jirêve îblîse (şeytane), le‘nata Xudayê Jorî li ser bît.

- Ew taxute yê ku bi keyif û riza wî new‘ekî ‘îbadetî bo tête kirin.

- Ew taxute yê ku emrî li xelk û ‘alemê diket û dibêjîte wan werin ‘îbadetî bo min biken û li ber emrê min rawestin.

- Ew taxute yê ku dibêjît ez jî  ji xeybê dizanim û jê xeber bidet.

- Ew taxute yê ku ji bilî qanûna Xudayê Jorî hinartî ku Qur’ana pîroze bi qanûneka dî hukmî diket û didete kirin.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَقُلِ ٱلۡحَقُّ مِن رَّبِّكُمۡۖ فَمَن شَآءَ فَلۡيُؤۡمِن وَمَن شَآءَ فَلۡيَكۡفُرۡۚ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje: “Ev Qur’ana ji layê Rebbê hewe ve hatî ya heq û rast e. Vêca heçî kesê hez biket bila îman û baweryê pê bînît û heçî kesê hez biket jî bila înkara heqiyê biket (nê ew hema xedrê li ruha xwe diket).”[370]

370 Sûreta Kehf 29

# ŞÎRK

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ إِنَّمَا أُمِرْتُ أَنْ أَعْبُدَ اللَّهَ وَلَا أُشْرِكَ بِهِ إِلَيْهِ أَدْعُو وَإِلَيْهِ مَآبِ

“(Ey Muhemmed!) Tu, bêje: “Emrê min yê hatiye kirin ku ez hema her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Ellahu Te‘ala bitinê bikem û çu hevkûf û şirîka bo Wî çênekem. (Herdîsa Emrê min yê hatiye kirin), ku her ez gazî xelk û ‘alemê bikem da ku ew jî bêne ser rêka Wî (ya heq û rast) û zivirîna min hema her bal Wî bitinê ve ye.”[371]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ تَعَالَوْا أَتْلُ مَا حَرَّمَ رَبُّكُمْ عَلَيْكُمْ ۖ أَلَّا تُشْرِكُوا بِهِ شَيْئًا ۖ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: “Dê hûn werin da ez wan tiştan, ewêt ku Rebbê hewe li ser hewe heram kirîn bo hewe bixûnim û bêjim: Hûn qet çu tiştan bo Ellahu Te‘ala nekene hevkûf û şirîk…”[372]

Şîrk guneha ‘ewwilî û jirê ve; ewa ku pê bê-emriya Xudê Te‘ala li ser rûyê ‘erdî hatiye kirin.

Ew e ji zemanê Nuh Pêxemberî -selam li ser bin- heta zemanê Pêxemberê me Muhemmed-selat û selam li ser bin- şer û neyarî di navbeyna Tewhîd û şirkê da ya ber dewame û dê her ya ber dewam jî bî heta qiya metê.

371 Sûreta Re‘d 36
372 Sûreta En‘am 151

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الشِّرْكَ لَظُلْمٌ عَظِيمٌ

“Bê şik hevkûf û şirîk çêkirin (bo Ellahu Te‘ala) zilmeka gelek mezin e (mirov li ruha xwe diket).”[373]

Hîndî Pêxemberêt Xudê Te‘ala hinartîn-selat û selam li ser wan hemyan bin- wan bi şev û roj her gazîdikire xelk û ‘alemê û digote wa; werin êkatiya Xudê Te‘ala qebûl biken anku hemî new‘êt ‘îbadetî her bo Wî bitinê biken û xwe dûr ragirin ji şîrkê û ji wan eger û esbaba jî; ewêt ku mirovan radkêşine nav şîrkê û heta vê gavê jî ev de‘we û doza he ya berdewame û heta roja qiyametê jî dê ya berdewam bît bêrawestan.

Çûnku şîrk tehlîkeyeka gelek mezin e bo îman û baweriya Busulmanî, heçiyê bimrît û jê tobeneket, ew dê ebedî mînîte di nav agirê Cehnemê da.

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّهُ مَنْ يُشْرِكْ بِاللَّهِ فَقَدْ حَرَّمَ اللَّهُ عَلَيْهِ الْجَنَّةَ وَمَأْوَاهُ النَّارُ

“Bê şik heçî kesê şirîk û hevkûfan bo Ellahu Te‘ala çêket, bi sûnd, Xudê Te‘ala Biheşt ya li ser wî heram kirî, cih û warê wî agire.”[374]

Şîrk bela û musîbeteka gelek mezin e, çî Busulmanê ketiye di nav da‘ûruka şîrkê da; îleh ew di jîn û jiyara xwe da yê şepilî; wî yê xwe xapandî û xwe dixapînît jî; ji ya wî ve ew Busulmane! Nexêr ew, yê ji Busulmanetiyê bêbahir bî, ji ber wê şîrkê ya ku wî kirî û diket. Qet çu çare bo şîrkê nînin, dermanê wê hema her toba nesuh bitinê ye.

373 Sûreta Luqman 13
374 Sûreta Yusuf 106

Vêca şîrk jî eve ye; ku êk bawer biket yan bêjît: Bo Xudê Te'ala hinde şirîk û heval yêt heyîn; li gel zatê Wî, sifetêt Wî û fê'il û kirnêt Wî; anku ev e di hemî tiştan da şirîk û hevalêt Wî ne!; 'Eynen zat, sîfet û fê'ilêt wan şirîk û hevala jî her wekî yêt Xudê Te'ala ne; ka Xudê Te'ala yî çewane û di şêt çî biket ew şirîk û hevalêt Wî jî di we ne û ew dişên wê biken ya ku Ew diket, haşa:

Di nezera wan muşrîkan da, ew şirîk jî li gel Xudê Te'ala xuda û îlahin; ka çewa fer e ku her 'îbadet bo Xudê Te'ala bête kirin 'eynen her wesa divêt, bo wan şirîka jî 'îbadet bête kirin! Çûnku ew bawer diken û dibêjin: Ew şirîk û hevalêt ew bo Xudê Te'ala çêdiken, ew şirîkêt Xudê Te'ala ne di mezinahî û milkê Wî da! Eha ev tişte hemî ew şîrk e; ewa ku bi ziddê Tewhîdê ye, 'eynen her wekî ku ka çewa kafirî bi ziddê îman û baweriyê ye, şîrk jî bi ziddê Tewhîdê ye.

Haşa wan muşrîkêt ehmeq; xudanêt wê zêhniyetê li bere Xudê Te'ala bi şelînin; Rubûbiyeta Wî, Uluhiyyet Wî, nav û sîfetêt Wî ji Wî bistînin û bi dene hinde kes û tiştêt dî!!??

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمَا أَكْثَرُ النَّاسِ وَلَوْ حَرَصْتَ بِمُؤْمِنِينَ

"(Ey Muhemmed!) Tu çend hez bikey û yî micid bî jî bahra pitir ji mirovan naêne rayê; anku naên îman û baweryê naînin."[375]

375 Sûreta Yusûf 103

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا يُؤْمِنُ أَكْثَرُهُمْ بِاللهِ إِلاَّ وَهُم مُّشْرِكُونَ

“Bahra pitir ji wan îman û baweriyê naînin, bi Ellahu Te‘ala, (belê heke ew îman û baweriyê jî binîn) ew li gel wê îman û baweriya xwe hevkûf û şirîka bo Ellahu Te‘ala çêdken!”[376]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا مِنْ أَهْلِ الْكِتَابِ وَالْمُشْرِكِينَ فِي نَارِ جَهَنَّمَ خَالِدِينَ فِيهَا أُولَئِكَ هُمْ شَرُّ الْبَرِيَّةِ

“Bê şik ewêt îman û bawerî ne înandî ji ehlê Tewrat û Încîlê û ewêt şirîk û hevkûf bo Ellahu Te‘ala çêkirîn û çêdiken, ew dê çine nav agirê Cehnemê û heta hetayê ew dê bimîne di nav da. Eha hema her ew in; ewêt ku ji hemî mexlûqa dixirabtir û neqenc.”[377]

Geleka ji ‘alim û zanaêt Îslamê yê gotî: Qur’ana Pîroz hemî di derheqa Tewhîdê û xwe dûr kirna ji şîrkê da ya hatî û behs diket.

Ew kesê şirîk û hevala bo Xudê Te‘ala di êkê ji van her sê tiştan da; anku di Rubûbiyet û Ulûhiyet û nav û sîfetêt Wî da çêket, ew kes dê ji dînî xirhît û dê bîte muşrîk.

Şîrk di Rubûbiyeta Xudê Te‘ala da ew e; ku êk bawer biket û bêjît: Hinde kesêt heyn; wekî şêx, welî û qutba ew li gel Xudê Te‘ala kar û barêt kaînatê birêve diben û çareser diken!

376 Sûreta Yusûf 106
377 Sûreta Beyyîne 6

Şîrk di Ulûhiyeta Xudê Te‘ala da ew e; ku êk du‘a û hîviya ji qebra, şêx û mişayêxa, weliya û pêxemberan biket, da ku ew wî nêzîkî Xudê Te‘ala biken.

Şîrk di nav û sîfetêt Xudê Te‘ala jî da ew e; ku êk bawer biket û bêjît: Hinde kesêt heyn sîfet û wesfêt wan ‘eynen wekî sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala ne, ev e her wekî yê bawer biket û bêjît: hinde kesêt heyn Xeybê dizanîn yan jî bawer biket û bêjît: Hinde kesêt heyn qudret û şiyana wan hindî ya Xudê Te‘ala ye; hema ka wan çî bivêt ew dişên biken; qet çu tişt li ber wan yî asê nîne û asê nabît jî.

Ew ê şirîk û hevala bo Xudê Te‘ala çêket, ew we hizir diket û dibêjît: Ku Xudê Te‘ala bitinê neşêt harîkariya wî biket, ye‘nî ew, we hizir diket ku şiyan û quweta Xudê Te‘ala ya ze‘îfe û haşa kêmasiyêt Wî yêt heyn, lewma ew şirîk û hevkûfan bo Xudê Te‘ala çêdiket!

‘Eynen her wesa ewêt ku ji heddî zêde direhperês, ew jî we hizir diken û dibêjin: ku nîzama dînê Îslamê têra wan naket û cewaba hemî muhtaciyêt wan nadet, lewma ew ji dînê Îslamê direvin û înkar diken û ew diçin bi dûv taxûta dikevin û dibine kole û ‘ebdêt wa!

Xudê Te‘ala dibêjît:

ثُمَّ أَوْحَيْنَا إِلَيْكَ أَنِ اتَّبِعْ مِلَّةَ إِبْرَاهِيمَ حَنِيفًا وَمَا كَانَ مِنَ الْمُشْرِكِينَ

“(Ey Muhemmed!) Paşê Me, wehî bo te hinart (û Me, gote te) “Tu bibe tabi‘ê dînê Îslamê her wekî ku berî te Îbrahîm biye tabi‘ê dînê Îslamê bitinê û tu xwe bi dinî ve qayim ragire. Qet‘iyen Îbrahîm ne ji muşrîkan bû.”[378]

378 Sûreta Nehl 123

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِذْ قَالَ إِبْرَاهِيمُ رَبِّ اجْعَلْ هَٰذَا الْبَلَدَ آمِنًا وَاجْنُبْنِي وَبَنِيَّ أَن نَّعْبُدَ الْأَصْنَامَ

"(Ey Muhemmed!) Tu bîne bîra xwe demê Îbrahîmî gotî; "Ey Rebbê min! Tu vî bajêrî (anku Mekkehê) bike cihê êmnahî û tenahiyê, Tu min û ‘eyalê min dûr bêxe ji peristina pût û senema."[379]

Gelek cara Pêxemberî-selat û selam li ser bin- hosa du‘a dikir û digot: (Ey Xudayê min ez xwe bi Te diparêzim ku ez bizanîn tiştekî bo Te bikeme şirîk û heval û daxwaza efûkirnê ji Te dikem ku heke min bi nezanîna xwe di tiştekî da şirîkek bo Te çêkir bît).

Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- dibêjît: (Qiyamet na rabît, heta ku berî rabîna wê hinde qebîle ji ummeta min negehine muşrîkan û heta senem ne êne perirstin).[380]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَاعْبُدُوا اللَّهَ وَلَا تُشْرِكُوا بِهِ شَيْئًا

"Hûn hema her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Ellahu Te‘ala bitinê biken, qet bi çu tişan hûn çu hevkûf û şirîka bo Wî çêneken."[381]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَالَّذِينَ هُم بِرَبِّهِمْ لَا يُشْرِكُونَ

379 Sûreta Îbrahîm 35
380 Ya sehîhe, Tirmşzî ya riwayer kirî
381 Sûreta Nîsa 36

"(Eha îmandarêt rast û durust hema her ew in); ewêt ku bo Rebbê xwe çu tiştan nakene hevkûf û şirîk."[382]

Heçî kesê şirîkekî bo Ellahu Te'ala di Rubûbiyet û Ulûhiyet û nav û sîfetêt Wî da çêket, welewku ew bawer biket jî ku Xudê Te'ala êkî bitinê ye û 'îbadetî jî bo Wî biket her ji xwe ye, ew muşrîke, ev e wekî wan ewêt ku bawer diken û dibêjin:

Heft new'êt rîcalul-xeyba yêt heyn:(el-'Ebdal, el-Eqtab, el-Ewtad,el-'Urefa, en-Nuceba, en-Nuqeba, û jixwe serwerê wan hemyan Xewse yêt heyen.

Qet çu nav ji van di hedîsêt Pêxemberî da ne hatîne; ev nav e hema hindeka ji dev xwe yêt gotîn û belav kirin di nav nezan û cahêla da.

Şeyxulîslam Îbin Teymmiye (Xudê jê razî bît) dibêjît: Hindî hedîsêt ji Pêxemberî -selat û selam li ser bin- hatîne rîwayet kirin di derheqa (( Ewliya)) û ((Ebdala)) û ((Nuqeba)) û ((Nuceba)) û ((Ewtada)) û ((Eqtaba)) wekî çara yan hefta yan duwazda yan çila yan heftêya yan sêseda û sêzda, yan Qutbê bitinê, qet'iyen çu tiştêt rast anku hedîsêt durust zar Pêxemberî -selat û selam li ser bin-nehatîne, qet Selefa jî tiştek ji van gotina negotîne, bes hema gotina ((Ebdal)) tênebît, hedîsek bi wan ya hatiye riwayet kirin dibêjît: Ku Ebdal çil zelamin ew yê li Şamê, ev hinde zar îmamê 'Elî di Musneda îmamê Ehmed da bi şiklekî munqeti' ya hatî anku ev hedîse jî ne ya sabîte)).[383]

Îbn Cewzî (Xudê jê razî bît) di nav hedîsêt mewdu' da (3/152), dibêjît: ev hedîsa Ebdala ya mewdu'e û piştî ew çend hedîseka tînît; ewêt ku di derheqa Ebdala da warid bin, ew dibêjît: Qet çu hedîs ji van disehîh nînin.

382 Sûreta Mû'mînun 59
383 Kitêba el- Fetawa (11/167).

Te dît hindeka ji wan şêxperêsa got: Hişin; cidê wan dê li me det: Nê ew qencêt Xudê ne; hîmet û bereketêt wan her dihazir û nazirin, her demê mirov hawar bikete wan; hûvî û du‘a ji wan biket ew bi saxiya xwe û piştî mirna xwe jî di hawara mirovî tên û mirovan ji tengaviyêt giran xilas diken haşa!

Belê pa Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِن يَمْسَسْكَ اللَّهُ بِضُرٍّ فَلَا كَاشِفَ لَهُ إِلَّا هُوَ ۖ وَإِن يَمْسَسْكَ بِخَيْرٍ فَهُوَ عَلَىٰ كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ

“(Ey mirov tu baş bizane!) Nê heke Ellahu Te‘ala zererekê bigehînîte te, qet ji Wî pêvetir kesekî dî neşêt wê zererê raket û ji te bidete paş û heke Ew başiyekê jî bigehînîte te qet kesek neşêt wê başiyê ji te bidete paş û dûr biket Ew li ser hemî tiştan yî bihêz û şiyan e.”[384]

Herdîsa Xudê Te‘ala dibêjît:

أَمَّن يُجِيبُ ٱلْمُضْطَرَّ إِذَا دَعَاهُ وَيَكْشِفُ ٱلسُّوٓءَ

“(Erê ma ew qebir û pût çêtir in) yan jî Ew Xuda, yê ku dihawara wî kesî têt yê ku hawara xwe dibetê û Ew wê tengavî û ne xweşiyê li ser wan radiket.”[385]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَكَيْفَ أَخَافُ مَا أَشْرَكْتُمْ وَلَا تَخَافُونَ أَنَّكُمْ أَشْرَكْتُم بِاللَّهِ مَا لَمْ يُنَزِّلْ بِهِ عَلَيْكُمْ سُلْطَانًا

“Ma çewa ez dê ji wan pût û senemêt hewe tirsim; ewêt ku hûn bo Ellahu Te‘ala dikene hevkûf û şirîk?! Belê,

384 Sûreta En‘am 17
385 Sûreta Neml 62

hûn natirsin ku bêdelîl hûn yê bo Ellahu Te‘ala hevkûf û şirîka çêdiken."[386]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَتَجِدَنَّ أَشَدَّ النَّاسِ عَدَاوَةً لِّلَّذِينَ آمَنُوا الْيَهُودَ وَالَّذِينَ أَشْرَكُوا

"(Ey Muhemmed!) Bi sûnd, tu dê bînî ku Cûhî û ewêt şirîk û hevkûf bo Ellahu Te‘ala çêkirîn û çêdken ew ji hemî mirovan pitir û bi dijwarî her dujminin bo wan; ewêt ku îman û bawerî înandî û tînin."[387]

Şîrk hosa li dev mirovî çêdibît; ku mirov ne‘wekî ji wan ‘îbadeta; ewêt ku diferz û pêtivî; ewêt ku divêt, ew hema her bo Xudayê Jorî bitinê bêne kirin, ewêt ku hema her heqê Wî bitinê ne ji ber Rubûbiyet û Ulûhiyeta û nav û sîfetêt Wî, vêca hindek rabin hindeka ji wan ne‘wêt ‘îbadetî jibilî Xudayê Jorî bo hindekêt dî; bo hinde mirov û hinde tiştêt dî biken. Fer e bizanîn di nav mirovan da nexasima vî zemanî gelek ne‘wêt şîrkê yêt heyn.

Vêca hindecara kirina şîrka mezin ya pêşçav û aşkira ye anku mirov bi çavêt xwe dibînît li demê ku hindek diken.

Ew kes bikirna şîrka mezin dê bîte muşrîk; yê ku bizanît û pîştî zanî, xwe ji nav wan egerêt dibine sebebê şîrkê ne nekêşît; ew wan tiştêt şîrk pê çêdibît hema her bi berdewamî biket û ew lêvenebît û jê tobe neket.

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ اللَّهَ لَا يَغْفِرُ أَن يُشْرَكَ بِهِ وَيَغْفِرُ مَا دُونَ ذَٰلِكَ لِمَن يَشَاءُ ۚ وَمَن يُشْرِكْ بِاللَّهِ فَقَدِ افْتَرَىٰ إِثْمًا عَظِيمًا

386 Sûreta En‘am 81
387 Sûreta Maîde 82

“Bê şik qet Ellahu Te‘ala wî ‘efûnaket yê ku şirîk û hevkûfan bo Wî çêdiket, belê gunehêt ji bilî şîrkê û kafiryê bo wî yê ku Ew hez biket, Ew ‘efû diket. Heçî kesê şirîk û hevkûfan bo Ellahu Te‘ala çêket bi sûnd, ev e wî ji bêbextî guneheka gelek mezin kir.”[388]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ اللَّهَ لَا يَغْفِرُ أَن يُشْرَكَ بِهِ وَيَغْفِرُ مَا دُونَ ذَٰلِكَ لِمَن يَشَاءُ ۚ وَمَن يُشْرِكْ بِاللَّهِ فَقَدْ ضَلَّ ضَلَالًا بَعِيدًا

“Bê şik qet Ellahu Te‘ala wî ‘efû naket yê ku şirîk û hevkûfan bo Wî çêdiket, belê gunehêt dî ewêt ku ji bilî şîrkê bo wî yê ku Ew hez biket, Ew ‘efû diket. Heçî kesê şirîk û hevkûfan bo Ellahu Te‘ala çêket bê şik ev e, ew bi xirhaneka kûr û dûr ji rêka heq dûr ket.”[389]

Cabir (Xudê jê razî bît) dibêjît: Zelamek hate huzûra Pêxemberî-selat û selam li ser bin- û gotê: Ya qasidê Xudê ew her du tiştêt Biheştê û Cehnemê bo mirovan fer û wacib diken çî ne? Pêxemberî-selat û selam li ser bin-gotê: (Yê bimrît û çu şirîka bo Xudayê Jorî çêneket ew dê çîte Biheştê, û yê ku heta dimirît; bêtobe kirin şirîka bo Xudayê Jorî çêket ew dê çîte Cehnemê).[390]

Li demê carekê pirsyar ji Pêxemberê Xudê- selat û selam li ser bin- hatiye kirin; gelo kîjik guneh ji hemî guneha ya mezintire? Pêxemberî got: (Çêkirna şirîk û hevkûfa ye bo wî Xudayî; Ew ê ku tu xulqiyet kirî û dayî).[391]

388 Sûreta Nîsa 48
389 Sûreta Nîsa 116
390 Muslim
391 Buxarî

Xudê Te‘ala dibêjît:

قَدْ كَانَتْ لَكُمْ أُسْوَةٌ حَسَنَةٌ فِيٓ إِبْرَٰهِيمَ وَٱلَّذِينَ مَعَهُۥٓ إِذْ قَالُواْ لِقَوْمِهِمْ إِنَّا بُرَءَٰٓؤُاْ مِنكُمْ وَمِمَّا تَعْبُدُونَ مِن دُونِ ٱللَّهِ كَفَرْنَا بِكُمْ وَبَدَا بَيْنَنَا وَبَيْنَكُمُ ٱلْعَدَٰوَةُ وَٱلْبَغْضَآءُ أَبَدًا حَتَّىٰ تُؤْمِنُواْ بِٱللَّهِ وَحْدَهُۥ

“(Ey gelî îmandaran) Bi sûnd, bo hewe di Îbrahîmî û di wan îmandaran jî da; ewêt ku li gel wî çav lêkirneka gelek baş ya hey; nexasima li demê ku wan gotiye qewmê xwe: “Em ji hewe û ji wan tiştan; ewêt ku hûn ji bilî Ellahu Te‘ala ‘îbadetî bo diken didûr û berîne, em înkara hewe û dînê hewe dikeyn. Dujminahî û kerb û ‘înandê dest pê kir û kete di navbeyna me û di navbeyna hewe da heta hetayê, qet hêdî narabît heta ku hûn îman û baweriyê bi Ellahu Te‘ala bitinê neînin.”[392]

Gelek ji Busulmana yêt heyn çu şîrk li dev wan nîne û nekiriye û na ken jî, belê ew ehlê şirkê, kafiran û bîd‘etçiya bo xwe neyar nabînin û kerbêt wan ji wan navebin, welewku ew mirovêt wî yêt nêzîk jî bin; ji ber wê hindê Busulmanetiya wan ne ya durust e, çunku ew wî esasê hemî Pêxember (Silavêt Xudê li ser wan hemyan bin) pê hatîn red diket; anku bi wê muhebeta wî ya li gel muşrîk û kafiran yan yê hej fikra dimoqrasiyê, qomunistiyê û sosyalistiyê û ewêt wekî wan biket yan jî ew wan baş û durust bizanît, ew kes dê kafir bît, çenda ku ew kes nivêja biket, rojiya bigrît û xêr û sedeqa jî bidet û xwe Busulman jî hisab biket ji xwe ye!.

392 Sûreta Mumtehîne 4

# GELEK NEW‘ÊT ŞÎRKÊ YÊT HEYN

Hinde new‘êt şîrkê eve ne:

1-Şîrka du‘a û hîviya; şîrka du‘a û hîviya ew e; ku mirov du‘a û hîviya ji qebra, şêx û mişayêxa, weliya û pêxemberan biket, bo daxwaza rizqî, şîfayê ji nisaxiya û jibilî wan jî biket.

2-Şîrka niyet û meqsedê; şîrka niyet û meqsedê ew e; ku ew ‘ibadet û ‘emelê mirov diket niyet û meqseda mirovî bo xeyrî Xudê Te‘ala bît; ye‘nî riyakariyê û rumetiyê biket.

3- Şîrka muhebet û viyanê; şîrka muhebet û viyanê jî ew e; ku mirov hindî hej Xudê Te‘ala diket, hind yan jî pitir hej êkî dî û tiştekî dî biket, xwe bila ew kîbît.

4- Şîrka îta‘etî û qaîlbiniyê; şîrka îta‘etî û qaîlbiniyê jî ew e; ku mirov êkî dî di çêkirna hukum û ehkama da bînîte rêza Xudê Te‘ala, nê çêkirin û danana hukum û ehkama anku qanûna hema her heqê Xudê Te‘ala bitinê ye.

5- Şîrka Hulul û têkilbiniyê; şîrka hulul û têkilbiniyê jî ew e; ku êk bawer biket û bêjît: Haşa; Xudê Te‘ala yê têkilî nav hemî mexluqata bî û yê ketiye di nav wan da!

6- Şîrka Teseruf; birêve birna kar û bara; şîrka Teseruf û birêve birna kar û bara jî ew e; ku êk bawer biket û bêjît: Hinde kesêt heyn wekî şêx, welî û qutba ew li gel Xudê Te‘ala kar û barêt vê kaînatê birêve diben û çareser diken!

7- Şîrka xewf û tirsê; şîrka xewf û tirsê jî ew e; ku êk bawer biket û bêjît: Ji bilî Xudê Te‘ala hindek yêt heyn ew jî dişên faydey bidene mirovî yan zererê bigehîne mirovî yan ka mirov çend ji Xudê Te‘ala ditirsît hind ji wan bitirsît, yan yê bawer biket û bêjît: Mirî dişên faydey yan

zererê bigehîne mirovî û ji mirya bitirsît yan jî yê bawer biket û bêjît: Cidê hindeka dê li me det ji wan bitirsît.

8- Şîrka tewekul û pişt germiyê; şîrka tewekul û pişt germiyê jî ew e; ku êk di dilê xwe da î'tîmada xwe ji xeyrî Xudê Te'ala bidete ser êkî dî, xwe bi wî ve girê bidet bo çêbîna wan şol û kara; ewêt ku ji Xudê Te'ala pêvetir qet kesekî dî neşêt wan tişta biket û çêket.

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنَّهُ مَن يُشْرِكْ بِٱللَّهِ فَقَدْ حَرَّمَ ٱللَّهُ عَلَيهِ ٱلْجَنَّةَ وَمَأْوَاهُ ٱلنَّارُ وَمَا لِلظَّٰلِمِينَ مِنْ أَنصَارٍ

"Bê şik heçî kesê şirîk û hevkûfan bo Ellahu Te'ala çêket, bi sûnd, Ellahu Te'ala Biheşt ya li ser wî heram kirî, cih û warê wî agire. Bo zalim û zordaran qet çu harîkar nînin û nabin."[393]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلَوْ أَشْرَكُواْ لَحَبِطَ عَنْهُم مَّا كَانُواْ يَعْمَلُونَ

"Nê heke ew bo Ellahu Te'ala hevkûf û şirîka çêken, ew kar û 'emelêt wan kirîn; ew hemî dê betal û pûç bin."[394]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلَقَدْ أُوحِيَ إِلَيْكَ وَإِلَى الَّذِينَ مِن قَبْلِكَ لَئِنْ أَشْرَكْتَ لَيَحْبَطَنَّ عَمَلُكَ وَلَتَكُونَنَّ مِنَ الْخَاسِرِينَ

"(Ey Muhemmed!) Bi sûnd, wehî bo te û bo wan pêxemberêt berî te jî ya hatiye hinartin, (anku Ellahu

393 Sûreta Maîde 72
394 Sûreta En'am 88

Te'ala yê gotiye hemî pêxemberan û ev e Ew yê dibêjîte te jî): "Xudê neket, heke tu hevkûf û şîrîka bo Ellahu Te'ala çêkey hemî kar û 'emelêt te dê pûç û betal bin û tu dê biye ji wan ewêt ku dixusaret."[395]

Eve bi delîlêt Qur'an û sunnetê bo me aşkira dibît ku hinde cara şîrk xudanê xwe ji nav dînê Îslamê dertêxît û kar û 'emelêt wan pê betal dibin, ev e ji ber vê hindê 'alima li ber ronahiya ayet û hedîsêt rast şîrik ya kiriye du cûn û qisim: Şîrka mezin û şîrka bûçûk.

395 Sûreta Zumer 65

# 1- ŞÎRKA MEZİN

Şîrka mezin du qisme; şîrka aşkira û şîrka nepenî, şîrka aşkira wekî çêkirna şirîk û hevala bo Xudê Te'ala, peristina heykel, pût û senema, qebra û mirya û şîrka nepenî jî wekî; şîrka wan kesa; ewêt ku tewekula xwe didene ser welî, şêx û mişayêxa û pişta xwe bi wan germ diken û wekî şirka munafiqa ya mezin yan jî wekî şirka wan kesan ewêt ku bi şik û guman di f'il û kirin û şiyan û qudreta Xudê Te'ala da.

Bi şîrka mezin kar û 'emelêt mirovan betal dibin, çûnku ew xudanê xwe ji nav dînê Îslamê dertêxîti û ji Tewhîdê; îman û baweriyê bêbahir diket.

Xudê Te'ala dibêjît:

وَإِذْ قَالَ لُقْمَانُ لِابْنِهِ وَهُوَ يَعِظُهُ يَا بُنَيَّ لَا تُشْرِكْ بِاللَّهِ إِنَّ الشِّرْكَ لَظُلْمٌ عَظِيمٌ

"(Ey Muhemmed!) Tu bîne bîra xwe li demê Luqmanî we'z û şîret li kurê xwe kirîn û gotiyê: "Ey kurê min! Tu çu hevkûf û şirîka bo Ellahu Te'ala çêneke! Bê şik hevkûf û şirîk çêkirin (bo Ellahu Te'ala) zilmeka gelek mezin e; mirov li ruha xwe diket."[396]

Şîrka mezin ew jî wekî kafiriya mezin û heta ew ji kafiriya mezin jî hêj mezintire, ew hemî kar û 'emelêt mirovî yêt baş û qenc betal diket, xudanê xwe dibete dibin sifrê da û di dinya û axretê da rûreş û şermizar diket.

Hinde cara şîrka mezin bi hinde kar û kirina çêdibît li dev mirovan û peyda dibît ku dibêjinê:

396 Sûreta Luqman 13

Şîrka fê'lî eve ye; wekî peristina heçî tiştê hebît, bo nimûne wekî peristina mirovan, mirya, qebra, put, senem û heykela, ber û dara... yan yê ser û nezra jibilî navê Xudayê Jorî; li ser navê hindekêt dî serjêdiket û didet, welewku ew kes 'îbadetî jî bo Xudayê Jorî biket, ew kes bi wê hindê dibîte muşrîk... Hinde cara şîrka mezin bi axiftin û gotina çêdibêt ku dibêjinê:

Şîrka qewlî; ev e wekî yê bêjît: Ez xeybê dizanim û yê tirane û yariya bi tiştekî ji wan tiştan biket; ewêt ku dînê Îslamê pê hatî yan jî yê ezmanê xwe di derheqa Xudê Te'ala û Pêxemberê Wî da dirêj biket, yan yê di tengaviya da gazî bikete qebran, miryan û ecinan, û hawar dikete şêx û mişayêxan û wan kesêt ku ne dihazir û heta yêt hazir jî; ew wan tiştan ji wan bixwazît û daxwaz biket; ewêt ku hema her heqê Xudê Te'ala bitinê ne; ewêt ku divêt, hema her ji Wî bitinê bêne xwastin û daxwaz kirin; ev e her wekî daxwazkirna kur û kiça, şîfayê û xilaskirna ji tengaviya...

Xudê Te'ala dibêjît:

إِيَّاكَ نَعْبُدُ وَإِيَّاكَ نَسْتَعِينُ

"Em hema her ji dil 'îbadet û ta'etî bo Te bitinê dikeyn û her harîkariyê ji Te bitinê dixwazîn û daxwaz dikeyn (ey Rebbê hemî 'alema!)."[397]

Şîrka mezin bi çî rengî hebît û ya çewa bît, xudanê xwe ji nav dînê Îslamê dertêxît û qet Xudayê Jorî wî 'efû naket heke ku xudanê wê jê tobe neket.

Xudê Te'ala dibêjît:

فَلاَ تَجْعَلُواْ لِلّهِ أَندَاداً وَأَنتُمْ تَعْلَمُونَ

397 Sûreta Fatih 5

“Vêca hûn çu şirîk û hevkûfan bo Ellahu Te‘ala çêneken, nê hûn bi xwe jî dizanin (ew qebir û senem neşên bo hewe çu biken û qet wan çu pê çênabît jî).”[398]

Hinde cara kirna şîrka mezin ne ya pêşçav e; ya nepenî û xefî ye; li demê têtekirin mirov bi çavêt xwe nabînît, ev e her wekî şîrka wan kesa ewêt ku ji xeyrî Xudayê Jorî tewekula xwe didene ser hindeka û pişta xwe bi wan qaîm û germ diken yan jî wekî şîrk û kafiriya minafiqa ya mezin, welewku ew bi serve jî ew xwe Busulman hisab biken, belê ew ji nav da kafir û mûşrikin.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَعَلَى اللَّهِ فَتَوَكَّلُوا إِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِنِينَ

“Vêca hûn her pişta xwe bi Ellahu Te‘ala qayim biken, heke rast e ku hûn dixudan îman û bawerî ne.”[399] Hinde cara jî şîrka mezin, bi bawerkirnê çêdibît ku dibêjnê:

Şîrka î‘tqadî; jixwe ev e tehlîka mezin e, ev e her wekî yê ji qebra, ji mirya, ji şêx û mişyêxa di dilê xwe da bitirsît û bêjît cidê wan dê li min det, yan yê bawer biket û bêjît: ji bilî Xudayê Jorî hindek yêt heyn ew xeybê dizanin, yan yê di dilê xwe da bawer biket û bêjît: Hinde kes yêt heyîn ew dişên saxa bi quweta xwe ya me‘newî mirovan bikujin yan mirya sax biken yan jî yê bawer biket û bêjît: Hindek yêt heyn ew harîkariya Xudayê Jorî diken; li gel Wî kar û barêt vê kaînatê û ‘alemê birêve diben, yan jî ewêt ku ka ew çend hej Xudayê Jorî diken, ew hind yan jî hêj pitir hej mirovan û hinde tiştan biken; we mezin biken, haşa ku ew wan tiştan bibene rêza Xudayê Jorî.

398 Sûreta Beqer e 22
399 Sûreta Maîde 23

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمِنَ النَّاسِ مَنْ يَتَّخِذُ مِنْ دُونِ اللَّهِ أَنْدَادًا يُحِبُّونَهُمْ كَحُبِّ اللَّهِ

“Hindek ji mirovan yêt heyn ew şirîk û hevkûfan bo Ellahu Te‘ala çêdken û ew her wekî hej Ellahu Te‘ala diken, ew we hej wan şirîk û hevkûfan diken.”[400]

Xudê Te‘ala dibêjît:

تَاللَّهِ إِنْ كُنَّا لَفِي ضَلَالٍ مُبِينٍ إِذْ نُسَوِّيكُمْ بِرَبِّ الْعَالَمِينَ وَمَا أَضَلَّنَا إِلَّا الْمُجْرِمُونَ

“Em bi Ellahu Te‘ala sûnd dixweyîn, rast e hîngê em di nav delalet û xirhaneka aşkira da bîn.” “Çûnkî me hûn; anku viyana senema li gel ya Rebbê hemî ‘alema wekî êk radigirt û hisab dikir.” “Hema ji gunehkarêt sûçdar (rêberêt xirhayî) pêvetir qet kesekî dî em ne xirandîne.”[401]

Pêxemberî-selat û selam li ser bin- dibêjît:

Sê new‘êt exlaqî yêt heyn ew li dev kê û di kê da hebin, ev e wî kesî tamkire şirînahiya îmanê; ji wan her sê exlaqa yê jirê ve eve ye; ku mirov ji hindî tiştêt heyn pitir hej Xudayê Jorî û qasidê wî biket...)[402]

Yê ji qebra û mirya bitirsît yan yê bawer biket ku fayde yan zerer dê ji miriya û nivîştiya gehîte wî, bila ew ji îman û baweriya xwe bitirsît.

Xudê Te‘ala dibêjît:

فلا تَخَافُوهُمْ وَخَافُونِ إِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِنِينَ

400 Sûreta Beqer e 165
401 Sûreta Şu‘era 96
402 Buxarî

“Vêca hûn qet ji wan netirsin, hûn hema her ji Min bitinê bitirsin; (bê-emriya Min neken) heke rast e ku hûn dixudan îman û bawerî ne.”[403]

Ew kesêt hêwana û pezî di bene ser qebra û minasiba û li ber pêt mezina serjêdiken, bê şik ew kes îman û bawriya xwe li derdiden û ji ber wê hindê ew dibine muşrîk, xwarna goştê wan hêwan û pezan bo îmandaran yî heram e, çunku yê wan hêwan û pezan serjêdiket di wê gavê da ew murted dibît, goştê wan hêwan û pezan naête xwarin û ya dî jî, çûnku ew hêwan û pez ne bo Xudê Te‘ala hatîne serjêkirin.

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ إِنَّ صَلَاتِي وَنُسُكِي وَمَحْيَايَ وَمَمَاتِي لِلَّهِ رَبِّ الْعَالَمِينَ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: “Bê şik nivêja min û ta‘et û ‘îbadetê min û saxî û mirna min hemî bi carekê her bo Ellahu Te‘ala bitinê ne, ew Rebbê hemî ’’ ‘aleman e.”[404]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَصَلِّ لِرَبِّكَ وَانْحَرْ

“ Vêca tu hema her bo Rebbê xwe nivêja bike û qurbanan; ser û nezran bide û serjêbike.”[405]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا أُمِرُوا إِلَّا لِيَعْبُدُوا إِلَهًا وَاحِدًا لَا إِلَهَ إِلَّا هُوَ سُبْحَانَهُ عَمَّا يُشْرِكُونَ

“Belê emrê wan hatibû kirin ku ew hema her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Ellahu Te‘ala bitinê biken. Belê, Ellahu

403 Sûreta Alî ‘Îmran175
404 Sûreta En‘am 162
405 Sûreta Kewser 2

Te‘ala Îlahekî bitinê ye, ji Wî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin. Ellahu Te‘ala yî pak û beri ye ji wan tiştan; ewêt ku ew bo Wî dikene hevkûf û şirîk."[406]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَا يُشْرِكْ بِعِبَادَةِ رَبِّهِ أَحَدًا

"Bila yê îmandar di kirna ‘îbadetê Rebbê xwe da; li demê ku ew bo Wî diket qet kesekê bo Wî nekete şirîk."[407]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَاعْبُدُوا اللَّهَ وَلَا تُشْرِكُوا بِهِ شَيْئًا

"Hûn hema her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Ellahu Te‘ala bitinê biken, qet bi çu tiştan hevkûf û şirîka bo Wî çêneken."[408]

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- dibêjît: (Le‘neta Xudê Te‘ala li ser wî bît yê ku ji bilî navê Xudê Te‘ala tiştekî bo êkî dî; li ser navê êkî dî serjêdiket).[409]

Ne durust e û heram e hêwan û pez; ser û nezir li ser mezarêt şêx û mişayêxa, minasiba, gor û qebra û li ber pêt axa û mezina bêne serjêkirin; çûnku goştê wan heywanan bi wê hindê heram dibît, xwe ew gor û qebir, ew mezar û minasib yêt kê jî bin, divêt, yêt îmandar wî goştî nexwen, çunku; ewêt we diken; anku ewêt wî goştî dixwen jî dibêjine wan hemyan; mirovêt gorperês.

Îmamê Elî (Xudê jê razî bît) dibêjît:

Pêxemberê XudêSelat û selam li ser bin-: Çar gotin yêt bo min gotîn ew jî eve ne:

406 SûretaTewbe 31
407 Sûreta Kehf 110
408 Sûreta Nîsa 36
409 Muslim

Le'neta Xudayê Jorî li ser wî kesî bît yê ku ser û nezra jibilî navê Xudayê Jorî, li ser navê êkî dî û bo êkî dî serjê diket, le'neta Xudayê Jorî li ser wî kesî bît yê ku le'neta li deyk û babêt xwe diket, le'neta Xudayê Jorî li ser wî kesî bît yê ku dujminekî dînî; bîd'etçiyekî vehewînît û berevaniyê ji biket û le'neta Xudayê Jorî li ser wî kesî bît yê ku tûxûbêt 'erdî diguhorît û xirab diket.[410]

Tariqê kurê Şîhab (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Pêxemberî Xudê -selat û selam li ser bin- yê gotî: Zelamek ji ber mêşekê yê çûye Biheştê û her dîsa zelamek ji ber mêşekê jî yê çûye Cehnemê:

Eve carekê du zelam di ber qewmekî ra borîn, berê xwe didenê ku wan senemekê hey, ew li ber singê wî senemê xwe dirawestayîne, wan gote wan her du zelamêt rêving:

Qet em nahêlîn kesek di nav me ra biborît; hata ku ew jî wekî me tiştekî; serekî bo putê me serjêneket.

Îna wan gote êkî ji wan her du zelama: Dê tu tiştekî; serekî serjêbike, wî zelamî got; nexêr qet ez çu tiştan; ser û nezra bo putê hewe nadem û serjê nakem, îna wan lêda ew zelam kuşt û avête wêrê, wan gote yê dî: Dê tu tiştekî; serekî bide? Wî got: Nê çu li gel min nîne, wan gotê: Dê tu jî tiştekî bide hema xwe mêşek jî bît, wî zelamî gote wa: Ma ka çu mêş nînin? Hema her di wê gavê da wan mêşek kire di destê wî da, wî ew mêş bo putê wan perçiqand, ji ber wê mêşê ew çu Cehnemê.[411]

'Ebdullahê kurê 'ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît: Pêxemberî-selat û selam li ser bin-yê gotî: Hindîke şîrk e di nav 'alema Îslamê da we ya xefî ye û ne ya

410 Muslim
411 Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Seneda vê hedîsê ya durust e

pêşçave; her wekî dengê pêt mûrîkeka reş li ser helanekî reş di nav tariyetî yê da (eha wesa şîrk bi gelek renga û bêdeng dixuşhîte nav cerg û dilêt mirovan).[412]

Şîrk wekî tura masîgiriye; tur di nav avê da wekî avê ya rohn û şefafe, wesa şiklê avê didet, masî nabînin lewma masî bi sanahî bi destê masîgiran têne girtin, ‘eynen şîrk jî, bo mirovêt îman sist ya wesa ne.

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît: Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Ellahu Te‘ala di vê hedîsa qudsî da dibêjît: Qet min minet bi çu şirîka û kesekê nîne, Ez bo xwe çu şirîka jî qet qebûl nakem û Ez wî kar û ‘emelî jî qebûl nakem; yê ku êk bikirna wî şirîkekî bo Min çêket, vêca heçî kesê bo min kar û ‘emelekî biket, bi kirna wî kar û ‘emelî ji xeyrî min; êkî dî li gel min bo min nekete şirîk (anku bo riyakarî; ji ber xelk û ‘alemê wî kar û ‘emelî neket), Ez dê wî û wî şirîkê wî jî; Ew ê ku wî bo min çêkirî terk kem û hêlim.[413]

Di riwayeteka dî da dibêjît: Ew kar û ‘emelê wî bo wî kesiye yê ku wî bo min kiriye şirîk, Ez yî dûr û berîme ji wî û ji wî kar û ‘emelê wî jî.

412 Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Ev hedîs e ya durust e
413 Muslim

## 2- ŞÎRKA BÛÇÛK

Şîrka bûçûk du cûn û qisme:

Şîrka bûçûka aşkira û şîrka bûçûka nepenî,

şîrka bûçûka aşkira wekî: Bi xwevekirna nivîştiya û wan tiştan; ewêt ku hindek cahêl û nezan dibêjn bo nezer û çavînkirnê dibaş in yan yê ku ji bilî Xudayê Jorî ji dil bi tiştekî dî sûnd bi xwet, ev e wekî wan kesa ewêt ku bi Pêxemberî û bi şêx û minasiba sûnd dixwen.

Şîrka bûçûka nepenî jî; wekî kirna riyakariyê di çî şol û karê hebît da. Şîrka bûçûk, wasîte û egera wê çendê ye bo xudanê xwe; ku heke ew jê tobe neket ew, wî radixirînîte nav şîrka mezin, çunku yê şîrka bûçûk di dilê wî da binecih bît, hemî ‘îbadet û xêrêt wî û qencî û çakiyêt wî bo riya û rûmetî ne; çûnku ew ji ber xelk û ‘alemê diket.

Belê şîrka bûçûk, ne wekî şîrka mezin e; çu kar û ‘emelêt mirovan bi şîrka bûçûk betal nabin û şîrka bûçûk xudanê xwe ji nav dînê Îslamê naxirînt û der naêxît.

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَوَيلللّمُصَلّينَ ٱلَّذِينَ هُم عَن صَلَاتِهِم سَاهُونَ ٱلَّذِينَ هُم يُرَآءُونَ

“Vêca weyl û ‘ezaba dijwar û giran bo wan nivêjkera bît; ewêt ku ji nivêjêt xwe dixafil; anku bi durustî û di wextêt wan da naken. Ewêt ku bo riya û rûmetî qencî û xêr û xêrata diden.”[414]

---

414 Sûreta Ma‘un 6

Xudê Te‘ala dibêjît:

يُرَآءُونَ ٱلنَّاسَ وَلَا يَذكُرُونَ ٱللَّهَ إِلَّا قَلِيلا

“Ew hema ji ber xelkê bo riya û rûmetî nivêjan diken, û ew gelek kêm navê Ellahu Te‘ala tîne bîra xwe (ew hema car û bara nivêjan diken!)”[415]

Ebû Se‘îd (Xudê jê razî bît) bi şiklekî merfu, dibêjît: Pêxemberî -selat û selam li ser bin- carekê gote sihabiyêt xwe: Erê, ez bo hewe bêjim, ew tiştê ku li dev min ji şerê Decalî xirabtir û pitir ez jê ditirsim li ser hewe, ka ew çi ye? Sihabiya got: Dê ka keremke bo me bêje, ya Pêxemberê Xudê! Pêxemberî -selat û selam li ser bin- got: Ew tişt şîrka nepenî ye, ku ew eve ye; zelamek rabît nivêja xwe bi terzekî cuwan û law biket, ev e çunku zelamek yê wî dibînît û yê berê xwe didete wî.[416]

Pêxemberî-selat û selam li ser bin-yê gotî:

Tiştê ji hemî tiştan pitir ez li ser hewe (anku ummeta xwe) jê ditirsim şîrka bûçûke, sihabiyêt wî gotê: Şîrka bûçûk çi ye û ya çewa ye, ey Pêxemberê Xudayê Jorî? -selat û selam li ser bin- cewaba wan da û got: Ew tişt riya karî û rûmetî ye.[417]

415 Sûreta Nîsa 142
416 Îmamê Ehmed
417 Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Ev hedîs e ya Sehîh e

# KAFİRÎ

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلَكِنَّ اللَّهَ حَبَّبَ إِلَيْكُمُ الْإِيمَانَ وَزَيَّنَهُ فِي قُلُوبِكُمْ وَكَرَّهَ إِلَيْكُمُ الْكُفْرَ وَالْفُسُوقَ وَالْعِصْيَانَ أُولَئِكَ هُمُ الرَّاشِدُونَ

"Ey gelî îmandaran! Belê, pa Ellahu Te'ala îman û bawerî (û Busulman etî) ya li ber hewe şirîn kirî û di dilêt hewe da ya xemilandî û kafirî û fasiqî jî li ber hewe yêt kirêt kirin. Eha hema her îmandarin; ewêt ku li ser rêka heq û rast."[418]

Xudê Te'ala dibêjît:

إِن تَكْفُرُوا فَإِنَّ اللَّهَ غَنِيٌّ عَنكُمْ وَلَا يَرْضَى لِعِبَادِهِ الْكُفْرَ وَإِن تَشْكُرُوا يَرْضَهُ

"(Ey gelî mirovan!) Heke hûn bibne kafir, bê şik Ellahu Te'ala, qet çu minet bi hewe nîne, belê Ew bo 'ebdêt xwe bi kafiryê yî razî nîne. Nê heke hûn şukra Wî biken; anku îmanê bînin Ew dê bi wê hindê ji hewe razî bît."[419]

Nê heke mirov baş li dûv biçît û berê xwe bidetê dê zanît ku eger û sebebêt peydabîniya kafiriyê di nav mirovan da ev herçar tişte ne:

Mezinahî, hesûdî, xezeb û şehwet

-Mezinahî; nahêlît mirov teslîmî heqiyê bibît û heqiyê qebûl biket, çunku yê xwe mezin diket, ew qet kesekê di ser xwe ra nabînît; ew we yî şaşe.

---

418 Sûreta Hucurat 7
419 Sûreta Zûmer 7

-Hesûdî; wel mirovî diket ku mirov şîret û nesiheta qebûl neket û şîret û nesiheta li kesekê jî neket, ew hema her tevşûkê berê xwe bitinê ye, qet wî haj kesekê nîne.

-Xezeb; mirovan ji edaletê dûr têxît, gava mirov bi xezeb ket, dindika ‘aqilî namîte di serê mirovî da, mirov li ber pêt şeytanî û nefsa xedar wekî holekê lê têt, qet mirov nuzanît ka heqî û neheqî çi ye.

Şehwet jî; çavêt mirov tarî diket û mejiyê mirovan reş diket; nahêlît mirov xwe bi ‘îbadetî ve mijûl biket, xem û mereqa mirovî hema her ew e; ka çewa mirov dê girê şehweta xwe tena ket û vemirînît; çunku mirov dibîte êxsîr û ‘ebdê zik û bin zikêt xwe, ji wê hindê pêvetir qet wî haj ‘emrê dinyayê nîne û nabît, ew hema her bi wê hindê ve yî mijûl û gîro ye, we çavêt wî ditarî ne.

‘Alim û zana dibêjin: Kafirî û cahêlî ji reşatî û spîlka çavî hêj pitir dinêzîkî êkûdune.

Kafirî hindî tehlîkeyeka giran û mezin e, hema bes her heqê Xudayê Jorî û Pêxemberê Wî bitinê ye, qet kesek neşêt kesekê ji dev xwe û bi re’ya xwe kafir biket; anku ka hema Qur’ana pîroz û hedîsêt Pêxemberî yêt rast dibêjin kî kafir e, hema ew kafir e.

Gelek qisim û ne‘wêt kafiriyê yêt heyn, ev e wekî; kafiriya wî kesî yê ku înkara Xudayê Jorî yan ya nav û sîfetêt Wî diket yan yê pavêjîte Xudayê Jorî û Pêxemberê Wî, yan yê înkara ayeteka Qur’anê biket yan jî qebûl neket, yan yê înkara êkî ji wan Pêxemberan biket; ewêt ku Xudê Te‘ala navêt wan di Quranê da gotîn, yan yê bêjît, şerî‘etê dînê Îslamê yê kevinbî; kêr vî zemanî naêt yan yê şirî‘etî qebûl neket yan yê înkara milyaketa, ecina biket, yan jî yê înkara nivêjêt ferz, zikatê, rojiyêt Remezanê, heca ferz, Biheştê, Cehnemê û rabina li roja qiyametê biket yan jî

haşa yê qetlê bisulmana û zînayê, faîzê û ereqê helal biket. Ew kes dê bi kafiriya mezin kafir bît, heke ku ew lêvenebît û jê tobe neket.

Qet çû caran kesek neşêt kesekê ji dev xwe û bi dîtina xwe kafir biket, belê ew têne yê ku hinde gotin û kirinêt kafirî pê çêdibît bi aşkirahî li dev mirovî bêjît yan biket; haşa ev e wekî wî kesî yê ku ezmanê xwe di derheqa Xudê Te‘ala da û Pêxemberê Wî da dirêj diket yan yê pavêjîte dînê Îslamê yan yê yarî û tiran bi tiştekî ji kar û barêt dînê Îslamê biket û yêt wekî va…

Eha hîngê tu dişêy li ber ronahiya delîlêt Qur’an û sunnetê wê gavê hukmî bi kafiriyê daniye ser wî û bêjiye wî; eva tu dikey û dibêjî kafirî ye.

Vêca heke wî di dûv wê hindê ra tobe kir; ev e ew xilas bû ji kafiriyê, belê pa heke ew ma li ser wê kafiriya xwe û jê tobe nekir hîngê; Emîrê Busulmana heke ku hebît dê emrî bi kuştina wî murtedî det.

Li demê ew kesê şirîka bo Xudê Te‘ala çêdiket yan jî yê kafiriyê diket, heke ew ji wê şîrk û kafiriyê tobe neket û li ser hindê bimrît, divêt, ew ne ête şûştin, ne ête kifin kirin, nivêj li ser ne ête kirin û heta divêt, ew di nav goristana Busulmana da jî ne ête veşartin.

Divêt, hema korkeka ji mirovan dûr bo kelexê wî bête kolan û pavijne tê da, da ku mirov bi wê bêhna wî ya pîs ne êne ezyet dan.

Kafiriya mezin bizidê îman û baweriyê ye, kafiriya mezin xudanê xwe ji dînî Îslamê dixirînît û dertêxît, hemî kar û ‘emelêt wî yêt baş û qenc betal diket, ‘eynen her wekî ku ka çewa şîrka mezin xudanê xwe dibete dibin sifrê da. Vêca heke xudanê vê kafiriyê jê tobe neket û li ser bimrît, ew dê ebedî mînîte di Cehnemê da, her wekî xudanê şîrka

mezin û li roja qiyametê qet çu berevanî û şifa‘et jî bo wî nînin û naête kirin.

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا سَوَاءٌ عَلَيْهِمْ أَأَنْذَرْتَهُم أَمْ لَمْ تُنْذِرْهُمْ لايُؤْمِنُونْ

“Bê şik li nik wan, ewêt ku înkara Qur’anê kirî û diken wekî êk e; çî tu wan bi ‘ezaba Ellahu Te‘ala bitirsînî yan jî netirsînî (qet li guhê wan nîne; ew naêne ser rêka rast) îman û baweriyê naînin.”[420]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ كَفَرُواْ لَوْ أَنَّ لَهُم مَّا فِي الأَرْضِ جَمِيعًا وَمِثْلَهُ مَعَهُ لِيَفْتَدُواْ بِهِ مِنْ عَذَابِ يَوْمِ الْقِيَامَةِ مَا تُقُبِّلَ مِنْهُمْ وَلَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ يُرِيدُونَ أَن يَخْرُجُواْ مِنَ النَّارِ وَمَا هُم بِخَارِجِينَ مِنْهَا وَلَهُمْ عَذَابٌ مُّقِيمٌ

“Bê şik ewêt kafir bûn (anku ewêt înkara şerî‘etê dînê Îslamê kirî û diken), nê heke hindî tiştêt li ser rûyê ‘erdî heyn ew hemî yêt wan bin û hindî dî jî li gel bin, ew dê wê rojê wan hemyan den û gorî xwe ken; da ku hema ew ji ‘ezaba roja qiyametê xilas bibin, belê qet çu ji wan naête wergirtin û bo wan ‘ezabeka gelek biêş û jan ya hey. wan kafirêt di Cehnemê da divêt, ji nav agirî derkevin, belê qet ew neşên jê derkevin û bo wan ‘ezabeka ber dewam ya hey.”[421]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا وَمَاتُوا وَهُمْ كُفَّارٌ أُولَئِكَ عَلَيْهِمْ لَعْنَةُ اللَّهِ وَالْمَلَائِكَةِ وَالنَّاسِ أَجْمَعِينَ خَالِدِينَ فِيهَا لَا يُخَفَّفُ عَنْهُمُ الْعَذَابُ وَلَا هُمْ يُنظَرُونَ

420 Sûreta Beqer e 6
421 Sûreta Maîde 37-36

“Bê şik ewêt kafir bûn (anku ewêt înkara şerî‘etê dînê Îslamê kirî û diken), û li ser wê kafiriyê mirîn, eha le‘neta Ellahu Te‘ala û ya milyaketa û ya hemî mirovan ya li ser wan; ew heta hetayê dê di bin le‘netê da bin; qet ‘ezab li ser wan naête sivik kirin û çu muhlet dan jî bo wan nîne û nabît.”[422]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَالَّذِينَ كَفَرُوا وَكَذَّبُوا بِآيَاتِنَا أُولَٰئِكَ أَصْحَابُ النَّارِ هُمْ فِيهَا خَالِدُونَ

“Belê ewêt kafir bûn û ayetêt Me direw hisab kirîn û diken, eha hema her ew in xelkê Cehnemê, ew heta hetayê ew dê bimînine tê da.”[423]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَا يَحْسَبَنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا سَبَقُوا ۚ إِنَّهُمْ لَا يُعْجِزُونَ

“Bila ewêt kafir bîn, we hisab neken ku hema hinde ew dê ji ‘ezaba Ellahu Te‘ala xilas bin. Bê şik ew neşên xwe li ber emrê Me asê biken (qet ew ji ‘ezaba Me xilas nabin).”[424]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَٰٓأَيُّهَا ٱلَّذِينَ ءَامَنُواْ لَا تَتَّخِذُوٓاْ ءَابَآءَكُمۡ وَإِخۡوَٰنَكُمۡ أَوۡلِيَآءَ إِنِ ٱسۡتَحَبُّواْ ٱلۡكُفۡرَ عَلَى ٱلۡإِيمَٰنِۚ وَمَن يَتَوَلَّهُم مِّنكُمۡ فَأُوْلَٰٓئِكَ هُمُ ٱلظَّٰلِمُونَ قُلۡ إِن كَانَ ءَابَآؤُكُمۡ وَأَبۡنَآؤُكُمۡ وَإِخۡوَٰنُكُمۡ وَأَزۡوَٰجُكُمۡ وَعَشِيرَتُكُمۡ وَأَمۡوَٰلٌ ٱقۡتَرَفۡتُمُوهَا وَتِجَٰرَةٞ تَخۡشَوۡنَ كَسَادَهَا وَمَسَٰكِنُ تَرۡضَوۡنَهَآ أَحَبَّ إِلَيۡكُم مِّنَ ٱللَّهِ وَرَسُولِهِۦ وَجِهَادٖ فِي سَبِيلِهِۦ فَتَرَبَّصُواْ حَتَّىٰ يَأۡتِيَ ٱللَّهُ بِأَمۡرِهِۦۗ وَٱللَّهُ لَا يَهۡدِي ٱلۡقَوۡمَ ٱلۡفَٰسِقِينَ

422 Sûreta Beqer e 61
423 Sûreta Beqer e 39
424 Sûreta Enfal 59

“Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Heke bab û kalêt hewe û birayêt hewe di ser îmanê ra hej kafiryê biken, hîngê hûn wan bo xwe nekene dost û xweştivî. Heçî kesê ji hewe wan bo xwe bikete dost û xweştivî, eha hema her ew in yêt  zalim û zordar. (Ey Pêxemberê min!) Tu bêje wan: “Heke babêt hewe, ‘eyalê hewe, birayêt hewe, kabaniyêt hewe, ‘eşîreta hewe û ew malê hewe bo xwe daye êk û kom kirî û ew tucareta hûn jê ditirsin ku vemînît û bihayê wê bişkêt û ew avahiyêt hûn pê didilxweş, ev e li ber hewe dişirîntir bin ji Ellahu Te‘ala û Pêxemberê Wî û ji cîhada di rêka dînê Ellahu Te‘ala da, hîngê hûn li hîviya xezeba Ellahu Te‘ala bimînin, (hûn dê bînin ku çewa Ew dê hewe dihîlak bet). Ellahu Te‘ala qewmê fasiq; ewêt ku ji rêka heq derketîn naînîte ser rêka heq û rast.”[425]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا لَا تَتَوَلَّوْا قَوْمًا غَضِبَ اللَّهُ عَلَيْهِمْ قَدْ يَئِسُوا مِنَ الْآخِرَةِ كَمَا يَئِسَ الْكُفَّارُ مِنْ أَصْحَابِ الْقُبُورِ

“Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Hûn çû caran wî qewmî yê ku Ellahu Te‘ala xezeb lê kirî bo xwe nekene dost û piştevan. Bi sûnd, ew we yêt bêhîvî bîn ji serferaziya axretê, her wekî ku ka çewa kafir bêhûvî bîne ji rabîna xelkê gora (anku ew dibêjin; heçî kesê mir qet çû caran hêdî ew ranabît û saxnabîte ve).”[426]

425 Sûreta Tewbe 22-24
426 Sûreta Mumtehîne 13

## 1-KAFİRİYA MEZİN

Çend new‘ek ji kafiriya mezin

a- Eve wekî kafiriya wî kesî yê ku îman û baweriyê bi Pêxemberê axirê zemanî Muhammedî -selat û selam li ser bin- neînît û bi aşkirahî yan jî bi nepenî, wî tiştî yê ku Xudayê Jorî ew pê hinartî direw hisab biket, ev e mûheqeq ew kes dibîte mulhud û kafir dibît.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَنْ أَظْلَمُ مِمَّنِ افْتَرَى عَلَى اللَّهِ كَذِبًا أَوْ كَذَّبَ بِالْحَقِّ لَما جَاءَهُ أَلَيْسَ فِي جَهَنَّمَ مَثْوًى لِلْكَافِرِينَ

“Erê ma kî ji wî yî zalimtire; yê ku bi bêbextî ji def xwe direwa zar Ellahu Te‘ala biket, yan jî ji wî yê ku piştî rast î û heqî bo hatî direw hisab biket? Gelo ma bo kafiran di Cehnemê da cih û wargehekî ku wan baş ‘ezab bidet nîne?”[427]

b- Ev e wekî kafiriya wî kesî yê ku xwe qude û mezin diket li hemberî dînê Îslamê; welewku ew hindî tiştêt Pêxember pê hatîn jî bawer biket; îman û baweriyê pê bînît jî, belê heke ew ji ber ‘înad û kubariya xwe, xwe bo emrê Xudayê Jorî neşkêt û wan tiştêt Xudayê Jorî bo Pêxemberêt xwe hinartîn pê qaîl nebît û qebûl neket, ev e mûheqeq hîngê ew kes kafir bû.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِذْ قُلْنَا لِلْمَلائِكَةِ اسْجُدُوا لِآدَمَ فَسَجَدُوا إِلا إِبْلِيسَ أَبَى وَاسْتَكْبَرَ وَكَانَ مِنَ الْكَافِرِينَ

427 Sûreta ‘Enkebût 68

“(Ey Muhemmed!) Tu bîne bîra xwe demê Me gotiye milyaketa: “Dê hûn hemî bo Ademî herne sucdê.” Milyaket hemî pêk ve çûne sucdê, Îblîs bitinê têne; ew neçû sucdê, wî xwe mezin û qudekir û ew bû ji kafira.”[428]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِذَا تُتْلَىٰ عَلَيْهِمْ آيَاتُنَا بَيِّنَاتٍ تَعْرِفُ فِي وُجُوهِ الَّذِينَ كَفَرُوا الْمُنْكَرَ ۖ يَكَادُونَ يَسْطُونَ بِالَّذِينَ يَتْلُونَ عَلَيْهِمْ آيَاتِنَا ۗ

“Li demê ayetêt Qur’ana Me yêt aşkira û rohn bo wan muşrîkan têne xwandin, tu dê bi ser û çavêt wan zanî ku ew ka çend di ‘aciz û nedirazî ne, hema ya nêzîk bû ku ew daberizne wan; ewêt ku ayetêt Me, bo wan dixûnin.”[429]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِذَا قِيلَ لَهُمُ اتَّبِعُوا مَا أَنْزَلَ اللَّهُ قَالُوا بَلْ نَتَّبِعُ مَا أَلْفَيْنَا عَلَيْهِ آبَاءَنَا أَوَلَوْ كَانَ آبَاؤُهُمْ لَا يَعْقِلُونَ شَيْئًا وَلَا يَهْتَدُونَ

“Demê bo wan tête gotin: “Dê hûn jî werin bi dûv wî tiştî bikevin Ew ê ku Ellahu Te‘ala bo hewe bi rêka wehyê hinartiye xwarê (anku Qur’anê)” wan digot: “Nexêr, em hema her dê bi dûv wî tiştî kevîn yê ku me bab û kalêt xwe li ser dîtîn!” Pa heke bab û kalêt wan di çu negehin û bi ser rêka heq û rast jî hilnebibin (gelo hîngê halê wan dê çibît)?!”[430]

c- Ev e wekî kafiriya wî kesî yê ku bi guman û şik anku du dil; Ew ê ku dibêjît: Gelo pêxember rast dibêjin an ne.

Dibêjine vê kafiriyê, kafiriya şik û gumanê çunku ew bi êqîn bawer naket; ku pêxember rast dibêjin.

428 Sûreta Beqer e 34
429 Sûreta Hec 72
430 Sûreta Beqere 170

Xudê Te'ala dibêjît:

وَقَالُوا إِنَّا كَفَرْنَا بِمَا أُرْسِلْتُمْ بِهِ وَإِنَّا لَفِي شَكٍّ مِمَّا تَدْعُونَنَا إِلَيْهِ مُرِيبٍ

"Ewa digot bê şik em înkara wî tiştî (wê wehyê) dikeyn ewa ku bo hewe hatî anku ya tu pê biye pêxember." Bê şik ew tiştê tu me bo gazî dikey (ku em îman û baweriyê pê bînîn) em di diderheqa wî tiştî da bişik û gumanîn."[431]

Xudê Te'ala dibêjît:

بَلْ هُمْ فِي شَكٍّ يَلْعَبُونَ

"Belê ew muşrîk yêt şik û gumanê da û ew yê bo xwe hema yariya û tirana diken anku ew dixafilin."[432]

d- Ev e wekî kafiriya wî kesî yê ku pişta xwe didete dînî û paşguhê xwe ve tavêt; qet ew guhê xwe nadete wî tiştê yê ku Pêxember pê hatî, naêxîte di dilê xwe da, hetta wî nevêt xwe têbigehînît û bizanît jî, ew ji dînî yî kûvî ye, ev e ew kes ji ber wê hindê kafir dibît.

Xudê Te'ala dibêjît:

وَالَّذِينَ كَفَرُوا عَما أُنْذِرُوا مُعْرِضُونَ

"Belê ewêt kafir bîn, ew yê rûyê xwe ji wê Qur'anê badiden ewa ku ew pê tîne tirsandin û hişyar kirin."[433]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَإِذَا تُتْلَىٰ عَلَيْهِ آيَاتُنَا وَلَّىٰ مُسْتَكْبِرًا كَأَنْ لَمْ يَسْمَعْهَا كَأَنَّ فِي أُذُنَيْهِ وَقْرًا ۖ فَبَشِّرْهُ بِعَذَابٍ أَلِيمٍ

431 Sûreta Hec 72
432 Sûreta Duxan 9
433 Sûreta Ehqaf 3

"Demê ayetêt Qur'ana Me, bo wî têne xwandin, ew xwe qude diket û diçît her wekî ku wî haj wan ayeta nebî û her wekî ku giranahiyek diguhêt wî da hey. Vêca tu mizgîniyê bide wî bi 'ezabeka gelek biêş û jan."[434]

e- Ev e wekî kafiriya wî kesî yê ku durû û mûnafiq; çûnku ew kes; serve serve xwe Busulman û îmandar pêşçav diket ji ber xelk û 'alemê, belê ji nav da mejiyê wî tijî kafiriye; halê wî eve ye; serve laîlahe îllelah û ji bin ve jî ne'uzû billah.

Xudê Te'ala dibêjît:

ذَلِكَ بِأَنَّهُمْ آمَنُوا ثُمَّ كَفَرُوا فَطُبِعَ عَلَى قُلُوبِهِمْ فَهُمْ لا يَفْقَهُونَ

"Wan, ew tişt dikir çûnkî îman û baweriya wan ne ya ji dil bû û paşê ew kafir bin, ji ber hindê Ellahu Te'ala dilêt wan muhrkirin, qet hêdî ew di rastiyê nagehin û fehm naken."[435]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَجَحَدُوا بِهَا وَاسْتَيْقَنَتْهَا أَنْفُسُهُمْ ظُلْمًا وَعُلُوًّا فَانْظُرْ كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الْمُفْسِدِينَ

"Wan, ji ber zilm û qudetiya nefsa xwe, ew mu'cîze; ewêt ku Mûsa bo wan pê hatî direw hisab dikirin, belê wan di dilê xwe da jî bawerî pê tîna; ku ew mu'cîze di rast in. Dê vêca tu berê xwe bidê ka dûmahîka xirabkaran hate ser çî û ya çilê hatî!"[436]

434 Sûreta Luqman 7
435 Sûreta Mû'mînun 3
436 Sûreta Nemil 14

## 2- KAFİRİYA BÛÇÛK

Ev ne‘wê kafiriya bûçûk ne bizidê îman û baweriyê ye, ev kafiriya he ji ber kirina hinde guneha li dev xudanê xwe peyda dibît û tête meydanê, ev kafiriya he xudanê xwe ji nav dînî Îslamê dernaêxît û naxirînît û bi vê kafiriya bûçûk çu kar û ‘emelêt mirovî betal nabin, hema îman û baweriyê mirovî zeîf û lawaz dibît, heke xudanê vê kafiriya bûçûk jê tobe neket û li ser bimrît, li roja qiyametê rewşa wî dê ya xirab bît, ew dikevîte ber meşyeta Xudayê Jorî; ka Ew dê ‘efû ket an ne, çunku şir‘et dibêjîte van gunehêt mezin kafiriya bûçûk.

Gelek qisim û new‘êt kafiriya bûçûk yêt heyn, hema bo nimûne ev e çendekin ji wa:

- Ev e wekî kafiriya bûçûk ya wî kesî; yê ku nankoriyê diket bi wan nî‘meta; ewêt ku Xudê Te‘ala ji kerema daynê; ew ne bi ezmanê xwe ne bi dilê xwe ne bixêr û sedeqêt xwe şukra wan nî‘meta neket, yan jî yê bêjît: Ev nî‘mete hemî ji çakî û qenciyêt filan û filan kesane li ser min, anku wan mirovan ev nî‘mete yêt dayne min.

Belê divêt, em baş bi zanîn; nê heta Xudayê Jorî rehmê ne êxîte dilê wan mirovan ew bi xwe neşên çu tiştî bidene kesekê.

Vêca divêt, mirov jirê ve şukra nî‘metêt Xudayê Jorî biket, çûnku xudanê wan nî‘meta yê heqîqî her Xudê Te‘ala bitinê ye û paşê di dûvra divêt, mirov şukra wî mirovî jî biket; Ew ê  ku Xudê Te‘ala bo me musexer kirî, anku Ew ê ew çakî û qencî li me kirî.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا بِكُمْ مِنْ نِعْمَةٍ فَمِنَ اللّٰهِ

“Ey gelî mirovan! Heçî nî‘met û xweşiya hûn dibînin ew hemî bi carekê ji terefê Ellahu Te‘ala ne, anku Wî yêt dayne te.”[437]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَعْرِفُونَ نِعْمَتَ اللّٰهِ ثُمَّ يُنكِرُونَهَا وَأَكْثَرُهُمُ الْكَافِرُونَ

“Ew dizanin ku Ellahu Te‘ala, gelek nî‘met yêt dayne wan (û ew li ser xwe diheqînin jî) belê, di dûv ra ew înkara wan diken! Bahra pitir ji wan dikafir in.”[438]

Xudê Te‘ala dibêjît:

أَهُمْ يَقْسِمُونَ رَحْمَتَ رَبِّكَ ۚ نَحْنُ قَسَمْنَا بَيْنَهُم مَّعِيشَتَهُمْ فِى ٱلْحَيَوٰةِ ٱلدُّنْيَا ۚ وَرَفَعْنَا بَعْضَهُمْ فَوْقَ بَعْضٍ دَرَجَٰتٍ لِّيَتَّخِذَ بَعْضُهُم بَعْضًا سُخْرِيًّا ۗ وَرَحْمَتُ رَبِّكَ خَيْرٌ مِّمَّا يَجْمَعُونَ

“(Ey Muhemmed!) Erê, ma ew dê rehma Rebbê te lêkve diken? Me di dinya yê da rizqê wan di navbeyna wan da yê lêkve kirî û Me, hindek ji wan bi gelek dereca yêt bilind kirîn di ser hindeka ji wan ra; da ku hindek ji wan hindeka bo xwe bidene şolî bi çakî. Belê, rehma Rebbê te gelek ji wî tiştî çêtir e yê ku ew bo xwe kom diken.”[439]

Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: Yê şukra mirovan neket, ew şukra Xudê Te‘ala jî naket.[440]

437 Sûreta Nehl 53
438 Sûreta Nehl 83
439 Sûreta Zuxrûf 32
440 Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît; Ev hedîs e ya sehîh e

‘Abdullahê kurê ‘Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît: Rojekê ez yî suwarbim li pişt Pêxemberî-

Selat û selam li ser bin- wî gote min: Ey genco! Ez dê hinde gotina bo te bêjim û nîşa te dem; tu dînê Xudê Te‘ala muhafize bike, Xudê jî dê te muhafize ket, tu dînê Xudê Te‘ala muhafize bike, Xudê jî bi harîkariya xwe dê li gel te bît û dê te muhafize ket.

Vêca li demê tu tiştekî bi du‘a bixwazî û daxwaz bikeyî; tu hama her bes ji Xudê bitinê bixwaze û daxwaz bike, û li demê tu harîkariyê bi xwazî, tu hema her harîkariyê ji Xudayê Jorî bitinê bixwaze (newebît çû caran ji mirya û yêt nehazir ne xwaze), tu bizane heke ummet hemî kom bibît, qet ew neşên çu faydeyî bigehîne te, îlleh ew fayde nebît yê ku Xudê Te‘ala bo te hezkirî; ku dê gehîte te. Her dîsa heke ew hemî kom bibin, qet ew neşîn çu zererê bigehîne te îlleh ew zerer nebît ya ku Xudê Te‘ala bo te teqdîr kirî; ku dê gehîte te. Nê qelem yê hatiye rakirin û hubir li ser sehîfê yê hişk bî).[441]

- Ev e wekî kafiriya bûçûk ya wî kesî; yê ku jibilî navêt Xudayê Jorî û kelamê Wî bi hindekêt dî yan bi hinde tiştêt dî sûnd dixwet.

‘Abdullahê kurê îmamê ‘Umer (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: Xudê Te‘ala nehya hewe ya kirî, ku hûn bi bab û kalêt xwe sûn bi xwen, vêca yê ji hewe viya sûnd bi xwet, bila ew bi navê Xudayê Jorî sûnd bi xwet yan jî hema bila ew hişbît; xwe ker û bêdeng biket).[442]

Carekê ‘Abdullahê kurê îmamê ‘Umer (Xudê ji wan her duka razî bît); guhlê bû ku zelamek yê dibêjîte

441 Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Ev hedîs e ya sehîhe
442 Mûtefequn eleyhî

zelamekî: Nexêr; ez bi Ke‘bê keme, ‘Abdullahê kurê îmamê ‘Umer gotê: Ne durust e mirov, jibilî navêt Xudayê Jorî bi tiştekî dî sûnd bi xwet.

Nê min ji Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê guhlêbî wî digot: Heçî kesê jibilî Xudayê Jorî bi tiştekî dî sûnd bi xwet (eve wî di dilê xwe da ew tişt hindî Xudayê Jorî mezin kir), ev e muheqeq jiber wê hindê ew kes kafirbû yan jî ev e wî şirîk bo Xudayê Jorî çêkirin; ew bo muşrîk.[443]

Li nav hemî herêmêt welatê me; li her gundekî yan jî li nav çend gunda îleh şêxek, mişayêxek, qebrek, berek, darek yan jî cih, çiya û tiştek yê hey xelkê wî cihî û rexudoranêt wan pê sûnd dixwen, ev e bo nimûne; li gundê Bate Mela Hisên, linav Jîrkiya Şe‘îbekir û li nav Doskiyêt Geverê peyîk…û gelekêt dî jî.

- Ev e wekî kafiriya bûçûk ya wî kesî; yê ku herb û şerê li gel Busulmana helal biket ya jî helal bizanît.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِن طَائِفَتَانِ مِنَ الْمُؤْمِنِينَ اقْتَتَلُوا فَأَصْلِحُوا بَيْنَهُمَا

“Heke ji îmandaran du qewma, du bira danade êkûdu û şer li gel êkûdu kir, hîngê hûn (ey gelî Busulmana!) Sulhê di navbeyna wan da biken û wan pêk bînin.”[444]

Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: Yê ‘êb û qusûrya bo birayê xwe yê Busulman çêket; bi xirabî behsê namûsa wî biket û hetka wî bibet, ev e fasiqî û ‘isyankariye û yê şerê birayê xwe yê Busulman biket û li hemberî wî dest pavêjîjte sîleh û çeka kafirî ye.[445]

443 Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Ev hedîs e ya sehîhe

444 Sûreta Hucurat 9

445 Mûtefequn eleyhî

Pêxemberî -selat û selam li ser bin- di xutba heca xatir xwastinê da yê gotî: Newebît hûn piştî min nezivrne ser kafiriya berê; newebît hindek ji hewe nedane patka êkûdu (anku hûn şerê li gel êkûdu neken).[446]

- Ev e wekî kafiriya bûçûk ya wî kesî; yê ku tehn û çika di ‘esil û nesebêt xelk û ‘alemê didet.

Pêxemberî-selat û selam li ser bin-yê gotî:

Du xislet (anku du fêhlêt xirab) di nav mirovan da yêt heyn, ew bo wan serkêş û egera kafiriyê ne; yê tehn û çika di ‘esil û nesebêt xelk û ‘alemê bidet; anku kêmasî û ‘êba bo wan çêket, (li dev xelk û ‘alemê wan rezîl û şermizar biket) yan yê bêjît: Ev e ji berê filan kesê ye (haşa), yan jî yê li ser mirya bi dengê bilind dikete girî û bi xwe dadet û bi mirya dibêjît).[447]

- Ev e wekî kafiriya bûçûk ya wî kesî; yê ku înkara ‘esilê xwe biket û dibêjît: Ez nekurê babê xwe me (anku ez ne ji babê xwe me), xwe ji bêbextî bikete kurê êkî dî, û ew dizanît jî ku ew kes ne babê wî ye.

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît: Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: Newebît hûn pişta xwe ne dene bab û kalêt xwe; xwe ji ser neseba wan neguhorin, ne bêjin; eve ne bab û kalêt me ne; em ne kurêt van ne. Nê yê ji difin bilindî xwe ji ser neseba babê xwe raket, xwe bêxîte ser navê êkî dî, ew kirna wî kafiriya bûçûke.[448]

Se‘dê kurê Ebû Weqasî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: Yê bêjît;

446 Buxarî
447 Mûtefequn ‘eleyhî
448 Buxarî

Ez ne kurê babê xwe me, ez kurê filan kesême û ew bizanît ku ew ne kurê wî kesiye jî, Biheşt li ser wî kesî ya heram e anku ew Biheştê bi çavêt xwe nabînît.[449]

- Ev e wekî kafiriya bûçûk ya wê jinkê; ewa ku înkara qencî û çakiyêt zelamê xwe diket; çî jinka nankor bît li gel zelamê xwe; anku ya başî, qencî û çakiyêt wî paş guhê xwe ve pavêt; neînîte pêş cavêt xwe û jibîr biket, qet çu me'rîfet di serê wê jinkê nîne û ew ya kore fehme, ew çû caran xêrê ji xwe nabînît.

'Abdullahê kurê 'Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) Dibêjît, Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: Min berê xwe da agirê Cehnemê, ku bahra pitir ji ehlê Cehnemê jinkin, çunku ew dinan korin; kafiriyê bi hevalînya mêrê xwe diken, îna êkî ji sihabiyêt Pêxemberî-selat û selam li ser bin- got: Erê, ma ew înkara Xudê Te'ala diken? Wî got: Nexêr, ew înkara qencî û çakiyêt zelamêt xwe diken. Nê heke tu di 'emrê xwe da; bi sal û zemanan; çend qencî û çakiyan li wan bikey û yî başbî li gel êkê ji wan, belê gava wê tiştek ku neyî bi dilê wê bît ji te dît, anku ji mêrê xwe dît, ew dê bêjît: Qet çû caran min xêr ji te ne dîtî ye; anku min çu qencî û çakî ji te nedîtî ne, ew dê wan hemî qencî û çakiyêt te red û înkar ket!).[450]

449 Mûtefequn eleyhî
450 Buxarî

# ‘EQÎDE: BÎR Û BAWERÎ

Ji layê ezmanê ‘Erebî ve gotina ‘eqîde bi me‘na; girê, hişkegirê, girêya qaîm û mikum tête gotin; anku dil pê tête girêdan.

Belê ‘Eqîde bigotina şirî‘etî anku dînî; ew bîr û baweriye (hizr û meyle) ewa ku ya ferz û pêtivî ye li ser her Busulmanekî ku ew bi ezmanê xwe bêjît, bi dilê xwe êqîn û bawer biket û bi e‘zayêt xwe jî ‘emel pê biket.

Bi kurtî ‘eqîde ew tişte yê ku mirov bîr û baweriyê pê tînît û têxîte mejiyê xwe û dilê xwe qaîm pêve girê didet, çî ew tişt; yî heq û rast bît yan jî yî batil bît, eha ew tişt dibîte îman û ‘eqîda mirovî; anku bîr û baweriya mirovî.

Eve her wekî ‘eqîde û bîr û baweriya me hey bi Rubûbiyet û Ulûhiyet û bi nav û sîfetêt Xudayê Jorî û bi qasidîniya Pêxemberê Wî û bi hindî tiştêt Xudayê Jorî ew bo me pê hinartî.

Zanîna ‘îlmê ‘eqîdê di ser zanîna hemî ‘îlma ra ye, çunku ji hemî ‘îlma pitir mirov muhtacî zanîna ‘îlmê ‘eqîdê ye, nê bi zanîna ‘eqîdê mirov Rebbê ‘alemê; Xudayê xwe nasdiket, nexasima bi zanîna nav û sîfetêt Wî, wekî Rubûbiyeta Wî; anku Xudatiya Wî û Uluhiyyet Wi; anku hebandin û peristina Wî, xaseten bi zanîna sîfet û wesfêt Wî qudret û mezinahiya Wî baştir bo me rohn û aşkira dibît.

Her dîsa bi zanîna ‘eqîda durust mirov dê qasidê Xudayê Jorî Muhemmedî -selat û selam li ser bin- jî diniyasît û wan tiştan jî dê zanît; ewêt ku Xudê Te‘ala ew bo me pê hinartî; nexasima mirov dê wan tiştan zanît Ewêt; ku dinepenî û ne dipêşçav; wekî Biheştê, Cehnemê û heyîna milyaketa û ecina….

Welhasil, bi zanîna ‘eqîdê mirov dê wan tiştêt muhîm hemyan ewêt ku Pêxember bo me pê hatî û gotîn û zanît.

Di dînê Îslamê da îman û bawerî anku ‘eqîde hemî ye; nê bê îman û bawerî çu Busulmanetî nîne û nabît, çunku Îslametî; îman û baweriya bi dilî, gotina bi ezmanî û kar û ‘emel kirna bi e‘za ye anku bi endamêt bedenê ye; qet çu kar û ‘emel bê îman û bawerî anku bêy ‘eqîda rast û durust ji mirovî qebûl nabin û her dîsa mirov çu mefayî ji çu kar û ‘emelêt xwe jî nabînin heta ku kirina wan kar û ‘emela ya rêkûpêk nebît li gel gotina şirî‘etî, anku divêt, kirna wan tiştan hemyan anegora şirî‘etî bît.

Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin- yê gotî: Xudayê Jorî emr yê li min kirî û yê gotiye min: Tu herb û cîhadê li gel mirovan bike û ji wan venebe hetta ku ew şehde neden û nebêjin; ji Xudayê Jorî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin û Muhemmed jî -selat û selam li ser bin- qasid û Pêxemberê emrê Wî ye.[451]

‘Eqîde, îman û bawerî kakilk û berê binyatî ye bo dînê mirovî; nê hemî tişt bo mirovî li ser ‘eqîde, îman û baweriyê ava dibin û ew li ser çu tiştan ava nabît.

Divêt, em baş bizanin dînê Îslamê; ‘eqîde û şirî‘ete heta ku mirov her duka; anku ‘eqîde û şirî‘etî li gelêk di jîn û jiyara xwe da bi cih neket û bi wan ‘emel neket, qet mirov li dinya û axretê rûspî û serferaz nabît.

Muhemmedê kurê el-Emîr es-Seyfiyê Tulubxayê kurê ‘Ebdullahê et-Turkî ed-Dîmeşqî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Mezhebê Selefa û herçar îmama anku: (Îmamê Şafi‘î, Îmamê Henefî, Îmamê Ehmedê kurê Henbel û Îmamê Malik (rehma Xudê Te‘ala li ser wan hemyan bît) û gelek ‘alimêt dî jî ji bilî wan jî dibêjin: Divêt, sîfet û wesfêt

451 Buxarî û Muslim

Xudê Te‘ala ji teşbîhkirinê û ji betalkirnê didûr bêne îsbat kirin, qety‘iyen ne durust e bo kesekê ku ew ji devxwe ‘eqîdeyekê yan jî ‘îbadetekî çêket û danît, belê fer e li ser wî ku ew bibîte tabi‘ê wî tiştî yê ku şirî‘etî gotî û pê hatî û ew pê ‘emel biket û ew çu tiştan bi navê dînî ji dev xwe çêneket).[452]

452 Ji kitêba er-Red el-wafir

## ‘EQÎDE DU NEW‘E

Du new‘ û qismêt ‘eqîdê yêt heyîn: ‘Eqîda heq; ew e ya ku bi delîlêt Qur’anê û hedîsêt rast ve girêdayî û ‘eqîda batil; ew jî ew bîr û bawerîne; ewêt ku hema hinde mirovan bi aqilê xwe û ji dev xwe gotîn û kirîne bela serê mirovan.

‘Eqîda batil, ew ‘eqîde ye; ya ku ji rêka heqiyê dûr, ewa ne bi delîlêt Qur’anê û hedîsêt rast ve girêdayî. Ev ‘eqîda batil, bi aqil û hewa û hewesê hinde mirovan ve ya girêda ye, xudanêt wê ‘eqîda batil ew, wî tiştî yê ku aqilê wan qebûl diket werdigirin û qebûl diken û yê ku aqilê wan qebûl neket ew red û înkar diken!

Belê bi dîtna ehlê ‘îlmî aqil bi serê xwe; anku bitinê nabîte jêderê zanînê yê tekûz û timam, nexasima di mijara bîr û baweriyê; anku ‘eqîdê da.

Belê fer e li ser me ku em baş bizanîn û fehim bikeyn ‘eqîda ji hemî ‘eqîda; ji hemî bîr û baweriya ya rast û durustir hema her ‘eqîda Ehlê Sunnet û cema‘etê ye; anku ‘Eqîda Selefêt salihe.

Çunkî ‘eqîda Ehlê Sunnet û cema‘etê ya Selefêt salih; li ber ronahiya delîlêt Qur’anê û hedîsêt rast û durust ya rohin û aşkira ye, ji berhindê ew ji hemî ‘eqîda ya rast û durustir e.

Navêt durust yêt ‘eqîda Ehlê Sunnet û cema‘etê anku ya Selefêt salih eve ne: Tewhîd, es-Sunne, Usulu-dîn, Fîqhul-Ekber, Eş-Şerî‘e û el-Îman.

Nê ehlê Sunnet û cema‘etê Selefêt salih dibêjin: Îman û bawerî; gotina bi ezmanî, tesdîqa bi dilî û ‘emelkirna bi e‘za ye anku bi endamêt bedenê ye.

Îmamê Buxarî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Ez yê gehiştîme hizar (1000) zelama ji ‘alimêt bajêra, qet min kesek ji wan nedît ku îxtîlaf kirbît di vê hindê da anku wan hemyan her digot: Îman û bawerî; gotina bi ezmanî, tesdîqa bi qelbî û ‘emelkirna bi e‘zaya ye anku bi endamêt bedenê ye û îman kêm û zêde jî dibît).[453]

Îmamê Şafi‘î (Rehma Xudê li ser bît) dibêjît; Ez şehdekiyê didem û dibêjim:

Îman û bawerî; gotina bi ezmanî, tesdîqa bi qelbî û ‘emelkirna bi e‘zaya ye anku bi endamêt bedenê ye û îman kêm û zêde jî dibît.[454]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَبَشِّرِ الَّذِينَ آمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ أَنَّ لَهُمْ جَنَّاتٍ تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الْأَنْهَارُ

“(Ey Muhemmed!) Tu mizgîniyê bide wan; ewêt ku îman û bawerî înandî, kar û ‘emelêt baş kirîn, bê şik bo wan, ew

Biheşt yêt heyîn; ewêt ku di bin qesrêt wan ra rûbar diherikin.”[455] Xudê Te‘ala dibêjît:

وَالْعَصْرِإِنَّ الْأِنْسَانَ لَفِي خُسْرٍ إِلَّا الَّذِينَ آمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ وَتَوَاصَوْا بِالْحَقِّ وَتَوَاصَوْا بِالصَّبْرِ

“Sûnd bi dem û zemanî, yan bi demê nivêja êvarê, bê şik mirov hemî yêt nav xusaretiyê da û dixusaretin; Belê, hema ew têne; ewêt ku ji dil îman û bawerî înandî û tînin û kar û ‘emelêt baş kirîn û diken û bo bi cih înandina heqiyê

453 Fetih El-Barî 1/47
454 Î‘tîqadu-Şafi‘î, Şeyxulîslam Ebû Hesen; ‘Eliyê kurê Ehmedê Hekarî
455 Sûreta Beqere 25

şîreta li êkûdu diken (û dibêjne êkûdu werin) da em xwe bi sebir û hedar li ser rêka Qur'anê qayim ragirîn."[456]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمَا أَمْوَالُكُمْ وَلَا أَوْلَادُكُم بِالَّتِي تُقَرِّبُكُمْ عِندَنَا زُلْفَى إِلَّا مَنْ آمَنَ وَعَمِلَ صَالِحًا فَأُوْلَئِكَ لَهُمْ جَزَاء الضِّعْفِ بِمَا عَمِلُوا وَهُمْ فِي الْغُرُفَاتِ آمِنُونَ

"(Ey gelî mirovan!) Gelekî û zêdehiya mal û 'eyalê hewe, hewe bi başî nêzîkî huzûra Me naket. Belê, hema ew (dê bi serferazî êne huzûra Min); ewêt ku îman û bawerî înandî, kar û 'emelêt baş kirîn, eha pêş wan kar û'emela ve; ewêt ku wan kirîn du cara ew dê êne xelat kirin, ew dê di qesr û 'uliyêt Biheştê da êmin û tena her û her mînin."[457]

Xudê Te'ala dibêjît:

ٱلَّذِينَ ءَامَنُوا۟ وَعَمِلُوا۟ ٱلصَّٰلِحَٰتِ طُوبَىٰ لَهُمْ وَحُسْنُ مَـَٔابٍ

"Ewêt îman û bawerî înandî, kar û 'emelêt baş kirîn, mizgînî bo wan bît bi wan lezzet û xweşiyan; ewêt ku ew li dûmahîkê dê vegerhine nav (anku li axretê cihê wan Biheşte)."[458]

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ آمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ سَيَجْعَلُ لَهُمُ الرَّحْمَٰنُ وُدًّا

"Bê şik ewêt îman û bawerî înandî û şol û karêt qenc kirîn, Xudayê Rehman dê bo wan viyanekê êxîte di dilê xelk û 'alemê da."[459]

456 Sûreta 'Esir 1-3
457 Sûreta Sebe 37
458 Sûreta Re'd 29
459 Sûreta Meryem 96

Ev navê Ehlu-Sunnetî û cema‘etî dibêjine wan kesa; ewêt ku peyrew û tabi‘êt rêka qasidê Xudayê Jorî Muhammedî ne -selat û selam li ser bin-, ew ew in; ewêt ku bi ‘eqîde û kirna ‘îbadetê xwe li ser rêka Pêxemberê xwe di berdewam li hemî dewr û zemanan.

Ebu Qasimê Temîmiyê Esfehanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Li demê tête gotin; filan kes yê li ser rêka sunnetê; ji ehlê sunnetê ye, me‘na wê ew e; ku ew anegora Qur’an û sunnetê ye; di hemî kirin û gotinêt xwe da, çûnku yê li ser rêka sunnetê bît, divêt, ew yî muxalif nebît li gel Qur’an û sunnetê).[460]

Divêt, baş bizanîn meselêt ‘eqîdê û ‘îbadetî di tewqîfîne; anku ka çewa ew ji dev Xudayê Jorî û Pêxemberê Wî Muhammedî -selat û selam li ser bin- hatîne divêt, ‘eynen hema herwesa, em baweriyê pê bînîn û wekî hatîn bêzêdehî û kêmkirin pê ‘emel bikeyîn.

Îmamê ‘Elî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Nê heke dîn bi aqil û re’ya mirovan ba; da binê xufkê bo meshekirnê ji servehiya wî ya pêtivîtir bît, belê bê şik min yê dîtî Pêxemberî -selat û selam li ser bin- meshe ya li ser servehiya her du xufkêt xwe kirî).[461] Vêca ji ber vê hindê hevalêt Pêxemberî -selat û selam li ser bin-, tabi‘iya, etba‘êt tabi‘iya û herçar îmamêt mezin; ewêt muctehîd wan hemyan ev ‘eqîda rast û durust bo xwe ya hilbijartî û li ser berdewamî ya daye jîn û jiyara xwe heta mirinê -rehma Xudayê Jorî li ser ruha wan hemyan bît- Amîn.

Belê sed ‘eyif û mixabinî hindek ji ‘alim û zanayêt vî demî we hizir diken û ji bêbextî dibêjin: Îmamê Şafi‘î û îmamê Henefî (rehma Xudê Te‘ala li ser wan bît) ji layê

460 El-Hucet fî beyan el-Lmehecetî
461 Ebu Dawud seneda wê ya sehîh

‘eqîdê; bîr û baweriyê da ew li ser rêbaza Eş‘erî û Maturîdî bin, anku ew dibêjin: Îmamê Şafi‘î Eş‘erî bû û îmamê Henefî Maturîdî bû!?

Qet we nîne îmamê Şafi‘î û îmamê Henefî (Xudê ji wan her duka razî bît) ew ji Selefêt Salihin; ew li ser rêbaz û ‘eqîda Ehlê Sunnet û cema‘etê anku ‘Eqîda Selefêt salih bin, heta di navbeyan Îmamê Şafi‘î û Ebûl Hesenê-Eş‘erî da 116 sal yêt heyin, anku Îmamê Eş‘erî didûv Îmamê Şafi‘î ra yê hatî û di navbeyan îmamê Henefî û Maturîdî jî da 177 sal yêt heyin, Maturîdî di dûv Henefî ra yê hatî, mavêca tarîx pişt û pişt  diçît gelo?

Qet çênabît û nedurust e mirov yî bê ‘eqîde bît, çunku îlleh her mirovekî ‘eqîde; bîr û baweriyek ya diserîda hey.

Vêca ew ‘eqîda di serê wî da hey yan ya heqe û rast e yan jî ya batile, jiber vê hindê divêt, mirov, xwe bi ‘elimînîte wê ‘eqîdê û fehim biket ewa ku Xudayê Jorî û Pêxemberî Wî pê ji me razî dibin; ewa ku Xudayê Jorî û Pêxemberî Wî zanîna wê û fehim kirna wê li ser me ferz û wacib kirî; ku em baş bi fehim kirin bizanîn û ji dil bawer bikeyîn û her bi rastî û durustî jî pê ‘emel bikeyn.

Vêca ka tu baş berê xwe bide xwe û xwe teftêş bike îlleh êk ji van her du ‘eqîda ya di serê teda hey.

Divêt, ew ‘eqîda mirov bo xwe dihildibijêrît ew, ew ‘eqîde bît ya ku bi wehyê ve; bi Qur’an û hedîsêt rast û durust ve ya girêdayî û qaîm bît; anku ji Qur’an û hedîsêt rast hatibîte wergirtn û zanîn.

Çunku Qur’an û hedîsêt rast û durust, berê mirovî didene wê ‘eqîdê û bîr û baweriyê; ewa ku ji hemî ‘eqîde û bîr û baweriya ya rast û durustir.

# RÊKA DİNÊ ÎSLAMÊ

Dinê Îslamê dinê Xudê Te‘ala yê dûmahîkê ye, çûnku dinê Îslamê ew dîne yê ku Xudê Te‘ala hemî Pêxemberêt xwe û li dûmahîka wan hemyan jî Pêxemberê xwe yê axirê zemanî Muhemmed–selat û selam li ser wan hemyan bin- pê hinartîn û hemî dînêt dî, piştî dinê Îslamê hatî yêt nesxe û betal bîn, belê, hukmê dinê Îslamê heta qiyametê dê yî mayî û berdewam bît.

Şeyxulîslam Ibin Teymiye yê Herranî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Dîn derece derece ji van hersê binîşa tête meydanê û peyda dibît; anku ji Îslamê, îmanê û îhsanê.[462]

Xudê Te‘ala dibêjît:

هُوَ ٱلَّذِيٓ أَرۡسَلَ رَسُولَهُۥ بِٱلۡهُدَىٰ وَدِينِ ٱلۡحَقِّ لِيُظۡهِرَهُۥ عَلَى ٱلدِّينِ كُلِّهِۦ وَلَوۡ كَرِهَ ٱلۡمُشۡرِكُونَ

“Her Ellahu Te‘ala ye, yê ku Pêxemberê xwe hinartî bi rêka rast û dînê heq (anku dînê Îslamê) da ku vî dînê heq (anku dînê Îslamê) bi ser hemî dîna bêxît û bilind ragirît heta qiyametê, çenda ku muşrîkan pê nexweş bît jî.”[463]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الدِّينَ عِندَ اللَّهِ الْإِسْلَامُ

“Bê şik dînê heq (dînê rast, durust û meqbûl) li nik Ellahu Te‘ala hema her dînê Îslamê bitinê ye.”[464]

462 Mecmu’l-Fetawa
463 Sûreta Tewbe 33
464 Sûreta Alî ‘Îmran 19

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَنْ يَبْتَغِ غَيْرَ الْإِسْلَامِ دِيناً فَلَنْ يُقْبَلَ مِنْهُ وَهُوَ فِي الْآخِرَةِ مِنَ الْخَاسِرِينَ

“Heçî kesê ji bilî dînê Îslamê bo xwe li dînekî dî bigerhît û bigrît (anku bi hinde rêbaz û qanûnêt dî ‘emel biket) bila ew baş bizanît qet‘iyen Ellahu Te‘ala wî dînî ji wî qebûl naket. Ew di axretê da dê ji wan kesa bît ewêt ku dixusaret.”[465]

Xudê Te‘ala dibêjît:

صِبْغَةَ اللَّهِ وَمَنْ أَحْسَنُ مِنَ اللَّهِ صِبْغَةً وَنَحْنُ لَهُ عَابِدُونَ

“Ey gelî mirovan!) Dê hûn berê xwe bidene vî rengî (anku vî dînî) yê ku Ellahu Te‘ala dayî, erê ma kî yî we heye bişêt dînekî dî çêket û bînît ku ji vî dînê Ellahu Te‘ala yî baştir û çêtirbît? Em bi xwe hema her ji dil bo Ellahu Te‘ala bitinê ‘îbadet û ta‘etî dikeyn.”[466]
Xudê Te‘ala dibêjît:

أَفَغَيْرَ دِينِ اللّهِ يَبْغُونَ وَلَهُ أَسْلَمَ مَن فِي السَّمَاوَاتِ وَالأَرْضِ طَوْعًا وَكَرْهًا وَإِلَيْهِ يُرْجَعُونَ

“Erê ma ew ji bilî dînê Ellahu Te‘ala; dînê Îslamê, bo xwe li dînekî dî digerhin û daxwaz diken?! Belê, ewêt di ‘esmanan da û di ‘erdîda heyn wan bivêt û nevêt ew hemî bi carekê yêt teslîmî Ellahu Te‘ala bîn û ew hemî her dê binik Wî ve êne zivirandin jî.”[467]

465 Sûreta Alî ‘Îmran 85
466 Sûreta Beqere 138
467 Sûreta Ta ha 124

Xudê Te‘ala dibêjît:

الْيَوْمَ أَكْمَلْتُ لَكُمْ دِينَكُمْ وَأَتْمَمْتُ عَلَيْكُمْ نِعْمَتِي وَرَضِيتُ لَكُمُ الْإِسْلَامَ دِينًا

“Evroke Min dînê hewe (anku dînê Îslamê) bo hewe timam û tekûz kir, Min qencî û çakiyêt xwe li ser hewe timam kir, Min dînê Îslamê bo hewe hilbijart û kire dînê hewe û hema her Ew bi dînê Îslamê bitinê ji ‘ebdêt xwe yî raziye.”[468]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَأَقِمْ وَجْهَكَ لِلدِّينِ حَنِيفًا ۚ فِطْرَتَ اللَّهِ الَّتِي فَطَرَ النَّاسَ عَلَيْهَا ۚ لَا تَبْدِيلَ لِخَلْقِ اللَّهِ ۚ ذَٰلِكَ الدِّينُ الْقَيِّمُ وَلَٰكِنَّ أَكْثَرَ النَّاسِ لَا يَعْلَمُونَ

“(Ey Muhemmed!) Vêca tu hema her berê xwe ji dil û bi timamî bide bal dînê heq û rast; dînê fitretê (ku dînê Îslamê û Tewhîde). Çûnku ev e, ew dîn e yê ku Ellahu Te‘ala li qayda mirovan çêkirî û mirov li ser dayîn. Qet bo çêkirna vî dînî yê ku Ellahu Te‘ala çêkirî û danadî çu guhorîn nîne û nabît. Eha her eve ye; rêka dînê heq û rast. Belê, bahra pitir ji mirovan vê hindê nuzanin û tê nagehin!”[469]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَنْ يُسْلِمْ وَجْهَهُ إِلَى اللَّهِ وَهُوَ مُحْسِنٌ فَقَدِ اسْتَمْسَكَ بِالْعُرْوَةِ الْوُثْقَىٰ ۗ وَإِلَى اللَّهِ عَاقِبَةُ الْأُمُورِ

“Heçî kesê ji dil ‘îbdetî û ta‘etî bo Ellahu Te‘ala biket û bi timamî xwe bispêrîte Ellahu Te‘ala û ew bi xwe jî li

468 Sûreta Maîde 3
469 Sûreta Rom 30

gel wê hindê yî qencîker bît, bê şik ev e, wî xwe bi qulpa ji hemyan qayimtir ve qayim ragirt, li dûmahîkê hemî şol û kara her dê vegerhine bal Ellahu Te'ala ve."[470]

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît, Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Hindî bûçûkêt Xudê Te'ala didete ser dinya yê, îleh Ew wan hemyan li ser qabilyeta qebûlkirna dînê Îslamê (Fitretê) didete ser dinyayê, paşê heke deykûbabêt wî bûçûkî Cuhî bin dê wî kene Cuhî, heke deykûbabêt wî File bin dê wî bûçûkî kene File û jixwe heke deykûbabêt wî agirperês bin dê wî kene Mecusî; agirperês).[471]

Ya rast ew fitrete ya ku Xudê Te'ala mirov pê înandîne ser dinyayê; anku qabilyeta qebûlkirna dînê Îslamê, ye'nî ew fitreta 'ewilî ye; ya ku li roja qal û belayê ruhêt mirovan hemyan soz û 'ehd pê daye Xudê Te'ala; li wî demê ku Xudê Te'ala li gel wan axivtî û gotiye wa:

وَأَشْهَدَهُمْ عَلَى أَنْفُسِهِمْ أَلَسْتُ بِرَبِّكُمْ قَالُوا بَلَى

"(Ey Muhemmed!) Tu bîne bîra xwe demê Rebbê te ji pişta Ademî ruhêt zûriyeta wî derêxistîn û ew bi xwe kirîne şahid li ser nefsa wan bi xwe û gotiye wa: "Erê ma Ez ne Rebbê hewe me?" wan hemyan pêk ve gotî: Belê, em şehdekiyê dideyn ku hema her Tu bitinê Ellahê me yî, Tu her Îlahekî bitinê yî."[472]

Ey Xuda! Em ji wê soz û 'ehda xwe; ewa ku li wê rojê me daye Te, qet lêve nebîne û lêvejî nabin jî; soz bît ku em xwe ji rêk û rêbazêt batil; hizr û fikrêt şaş û xelet, xwe ji wan hemyan biparêzîn û sitare bikeyn û herdîsa em soz û 'ehdê dideyne Te, ey Xuda! Ku em xwe li ser rêka dînê te;

470 Sûreta Luqman 22
471 Muslim
472 Sûreta E'raf 172

dînê Îslamê; anku li ser Tewhîdê; ‘eqîda rast û durust xwe qaîm ragirîn heta mirinê û bi hemî hêl û şiyanêt xwe jî her berevaniyê ji Tewhîdê; anku ji ‘eqîda dînê Îslamê bikeyn bêtirs û rawistan.

‘Eyadê kurê Hîmarî (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxember -selat û selam li ser bin- zar Xudê Te‘ala dibêjît: (Min hemî ‘ebdêt xwe li ser rêka rast; Fîtretê (anku qebûlkirna ‘eqîde û şerî‘tê dînê Îslamê) yêt xulqiyyet kirîn, belê şeytanî ew (ye‘nî hindek ji wa) yêt tirsandin; berê wan ji rêka Tewhîdê yê guhorî û ew yêt xirandin, û şeytanî ew tiştêt Min bo wan helal kirîn, ew li ser wan yêt heram kirîn û emr yê li wan kirî ku ew bêdelîl; hema kor korane bo Min şirîka çêken).[473]

Ji ber vê hindê îmamê Ehmed kurê Henbelî (Xudê jê razî bît) di wê gotina xwe ya meşhur da yê gotî; Bûçûkî gava êk ji deykûbabêt wî yêt kafir bimrît, hukum bi Busulmanetiya wî bûçûkî dê ête dan; çunku egera guhorîna ‘eslê wî anku fitretê li ser wî radibît).

Xudê Te‘ala dibêjît:

هُوَ سَمَّاكُمُ الْمُسْلِمِينَ مِن قَبْلُ

“Ellahu Te‘ala, berî nihe û di vê Qur’anê jî da navê hewe yê kirye Busulman, (anku navê ewêt tabi‘êt pêxembera hemiya Busulman e).”[474]

Pêxember-selat û selam li ser bin- dibêjît: (Ey gelî busulmana!) Hûn wî navî dane ser xwe; Ew ê ku Xudê Te‘ala danadiye ser hewe, ku Wî hûn bi navê musulman û mu’min yêt nav kirîn.[475]

473 Muslim
474 Sûreta Hec 78
475 Îmamê Ehmed û Tirmizî

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمَنْ أَحْسَنُ دِينًا مِمَّنْ أَسْلَمَ وَجْهَهُ لِلَّهِ وَهُوَ مُحْسِنٌ وَاتَّبَعَ مِلَّةَ إِبْرَاهِيمَ حَنِيفًا وَاتَّخَذَ اللَّهُ إِبْرَاهِيمَ خَلِيلًا

"Erê ma dînê kê ji dînê wî kesî yî qayimtir û çêtir e, Ew ê ku xwe bi timamî teslîmî Ellahu Te'ala kirî û diket û li gel wê hindê jî ew yî qencîker bît û bi rast î û durustî bi dûv dînê heq ketî ku dînê Îbrahîmî ye? Ellahu Te'ala Îbrahîm bo xwe kirbû dost û xweştivî."[476]

Xudê Te'ala dibêjît:

قُلْ هَذِهِ سَبِيلِي أَدْعُو إِلَى اللّهِ عَلَى بَصِيرَةٍ أَنَاْ وَمَنِ اتَّبَعَنِي وَسُبْحَانَ اللّهِ وَمَا أَنَاْ مِنَ الْمُشْرِكِينَ

"(Ey Muhammed!) Tu bêje wa: "Eha eve ye, rêka min, ez û ewêt li gel min jî, em her bi delîlêt rohn û aşkira gazî xelk û 'alemê dikeyn da ku ew jî bêne ser rêka dînê Ellahu Te'ala. Ellahu Te'ala yî pak û beri ye ji hemî kêmasiyan, ez bi xwe qet ne ji wa me; ewêt ku hevkûf û şirîka bo Ellahu Te'ala çêdiken."[477]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَأَنَّ هَذَا صِرَاطِي مُسْتَقِيمًا فَاتَّبِعُوهُ وَلا تَتَّبِعُوا السُّبُلَ فَتَفَرَّقَ بِكُمْ عَنْ سَبِيلِهِ ذَلِكُمْ وَصَّاكُمْ بِهِ لَعَلَّكُمْ تَتَّقُونَ

"Bê şik eha hema her eve ye, rêka dînê Min ya heq û rast (anku rêka dînê Îslamê; rêka Qur'ana kerîm), vêca hûn hema her bibne tabi'êt rêka dînê Min bitinê û li dûv herin, qet hûn bi dûv çu rêk û ta û bayêt dî nekevin (heke

476 Sûreta Nîsa 125
477 Sûreta Yûsuf 108

hûn li dûv wan biçin û guhê xwe bidene wa) ew dê hewe ji rêka dînê Ellahu Te‘ala dûr û veder ken. Eha Ellahu Te‘ala bi vê hindê qewyatiyê li hewe diket; da ku hûn xwe biparêzin û bê-emriya Wî neken."[478]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَاعْتَصِمُوا بِحَبْلِ اللَّهِ جَمِيعًا وَلاَ تَفَرَّقُوا

"Hûn hemî pêk ve xwe bi ta û rista Xudê Te‘ala ve qayim bigrin (anku hûn hemî pêk ve ji dil xwe di Qur'ana Wî werken; her pê ‘emel biken) û newebît hûn jêk perate û belav nebin."[479]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَقُلْ جَاءَ الْحَقُّ وَزَهَقَ الْبَاطِلُ ۚ إِنَّ الْبَاطِلَ كَانَ زَهُوقًا

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje hemî mirovan: "Eve heqî (anku dînê Îslamê) hat, batil ji binî pûç û betal bû û nema. Bê şik batilî pûç e, her dêçît û namînît."[480]

Xudê Te‘ala dibêjît:

بَلْ نَقْذِفُ بِالْحَقِّ عَلَى الْبَاطِلِ فَيَدْمَغُهُ فَإِذَا هُوَ زَاهِقٌ ۚ وَلَكُمُ الْوَيْلُ مِمَّا تَصِفُونَ

"Belê Em, heqiyê li nav serê batilî dideyn, ew batilî mehûy diket, vêca hema herhadirî ew ji binî radibît, mehûy û pûç dibît. Weyl û ‘ezaba giran bo hewe bît ji ber wan saloxeta ewêt ku hûn hejî Ellahu Te‘ala dibînin û bo Wî dibêjin."[481]

478 Sûreta En‘am 153
479 Sûreta Alî ‘Îmran 102
480 Sûreta Îsra 81
481 Sûreta Enbiya 18

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ إِنَّ رَبِّي يَقْذِفُ بِالْحَقِّ عَلاَّمُ الْغُيُوبِ

“(Ey Muhemmed!) Tu, bêje: “Bê şik her Rebbê min e, yê ku heqiyê tînît (li nav serê batilî didet û pê pûç diket), hema her Ew bitinê ‘alimê xeybê ye.”[482]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ جَاءَ الْحَقُّ وَمَا يُبْدِئُ الْبَاطِلُ وَمَا يُعِيدُ

“(Ey Muhemmed!) Tu, bêje: “Eve heqî hat, hêdî batil ser ji nû dest pê naket û qet nazivirîteve.”[483]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَأَمَّا الزَّبَدُ فَيَذْهَبُ جُفَاءً وَأَمَّا مَا يَنفَعُ النَّاسَ فَيَمْكُثُ فِي الْأَرْضِ

“Vêca ew kef, qirş û qal ji xwe diçin û pûç dibin, belê ew tiştê mefayî didete mirovan ew bitinê li ser rûyê ‘erdî dimînît. Eha herhosa Ellahu Te‘ala bo hewe metela tînît û aşkira diket (ku bê şik serferazî û serketin hema her ya ehlê îmanê ye).”[484]

Xudê Te‘ala dibêjît:

أَفَمَن يَهْدِي إِلَى الْحَقِّ أَحَقُّ أَن يُتَّبَعَ

“Erê ma vêca Ew ê xelk û ‘alemê digehînîte ser rêka heq û rast neçêtir û baştir e ku mirov her li dûv Wî bitinê biçît û guhê xwe bidete Wî?”[485]

482 Sûreta Sebe 48
483 Sûreta Sebe 49
484 Sûreta Re‘d 17
485 Sûreta Yûnus 35

Xudê Te‘ala di Qur’ana Pîroz da nêzîkî çil (40) yê gotî: Hûn Îta‘eta Pêxemberî biken û guhê xwe bidene wî; bi wê ya ku ew bo hewe dibêjît ‘emel biken, newebît hûn bê-emriya wî neken.

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَلْيَحْذَرِ الَّذِينَ يُخَالِفُونَ عَنْ أَمْرِهِ أَن تُصِيبَهُمْ فِتْنَةٌ أَوْ يُصِيبَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ

“Vêca ewêt bê-emriya Pêxemberî diken bila ew gelek li xwe dihişyar bin (û hêdî weneken) neku ji ber wê hindê belayek bête serê wan yan jî ‘ezabeka biêş û jan wan bihingêvît.”[486]

Xudê Te‘ala dibêjît:

مَنْ يُطِعِ الرَّسُولَ فَقَدْ أَطَاعَ اللَّهَ وَمَنْ تَوَلَّى فَمَا أَرْسَلْنَاكَ عَلَيْهِمْ حَفِيظًا

“Heçî kesê bi hedîsêt Pêxemberî; (yêt rast û durust ‘emel biket), bê şik ev e, wî bi gotina Ellahu Te‘ala; Qur’ana kerîm ‘emel kir û heçî kesê rûyê xwe badet (guhê xwe nedete Pêxemberî), (Nê Ey Muhemmed!) Me, tu birê nekirî ku tu şehnetiyê li wan bikey.”[487]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ أَطِيعُواْ اللَّهَ وَالرَّسُولَ فَإِن تَوَلَّوْا فَإِنَّ اللَّهَ لاَ يُحِبُّ الْكَافِرِينَ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: “Hûn her bi gotina Ellahu Te‘ala; Qur’ana kerîm û bi hedîsêt Pêxemberê Wî ‘emel biken.” Belê, heke wan pişta xwe da vê gazya te, bê şik qet çû caran Ellahu Te‘ala hej kafiran nekiriye û naket.”[488]

486 Sûreta Nur 63
487 Sûreta Nîisa 80
488 Sûreta Alî ‘Îmran 32

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَن يُطِعِ اللَّهَ وَالرَّسُولَ فَأُوْلَئِكَ مَعَ الَّذِينَ أَنْعَمَ اللَّهُ عَلَيْهِم مِّنَ النَّبِيِّينَ وَالصِّدِّيقِينَ وَالشُّهَدَاءِ وَالصَّالِحِينَ وَحَسُنَ أُوْلَئِكَ رَفِيقًا

“Heçî kesê bi gotina Ellahu Te‘ala; Qur’ana kerîm û bi hedîsêt Pêxemberê Wî; (yêt rast û durust ‘emel biket), ew dê li gel wan bît; ewêt ku Ellahu Te‘ala qencî û çakî li gelkirî; ji pêxemberan û rastgoya û şehîda û qenc û çaka. Eha hema her eve ne, heval û hogirêt law û berketî.”[489]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَن يَعْصِ اللَّهَ وَرَسُولَهُ فَإِنَّ لَهُ نَارَ جَهَنَّمَ خَالِدِينَ فِيهَا أَبَدًا

“Belê heçî kesê bê-emriya Ellahu Te‘ala û Pêxemberê Wî biket, bê şik cizayê wî agirê Cehnemê ye û ew heta hetayê dê mînîte di nav agirî da.”[490]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ يَا أَيُّهَا النَّاسُ إِنِّي رَسُولُ اللَّهِ إِلَيْكُمْ جَمِيعًا الَّذِي لَهُ مُلْكُ السَّمَاوَاتِ وَالأَرْضِ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje: “Ey gelî mirovan! Bê şik ez Pêxemberê Ellahu Te‘ala me, ez bo hewe hemyan yê hatîm, (wî Xudayî ez bo hewe hemyan yê hinartîm) Ew ê ku (her heft) ‘esman û ‘erd hemî bi carekê her milkê Wî bitinê ne.”[491]

489 Sûreta Nîsa 69
490 Sûreta Cin 23
491 Sûreta E‘raf 158

# ME‘NA DÎNÊ ÎSLAMÊ

Me‘na Îslamê di luxetê ‘Erebî da; teslîmîbînî, xweşkandin û qaîlbinî û guhdarî; ye‘nî qebûl kirna ji dile.

Me‘na Îslamê di îstîlaha şirî‘etî da jî eve ye; ku ‘ebd bi riza dilê xwe; bi viyan û aşkirahî teslîmî Xudê Te‘ala bît û xwe bo Wî bişkênît û bi Wî qaîl bît û bawer biket ku Ew êkî bitinê ye û her ‘ebd bi timamî emr û nehyêt Xudê Te‘ala bicih bînît, û qet bê-emriya Wî neket û xwe ji şîrkê û ehlê wî jî dûr ragirît.

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِذْ قَالَ لَهُ رَبُّهُ أَسْلِمْ قَالَ أَسْلَمْتُ لِرَبِّ الْعَالَمِينَ

“(Tu bîne bîra xwe) li demê Rebbê wî (anku li demê Xudê Te‘ala gotiye Îbrahîm Pêxemberî-selam li ser bin-: Tu xwe bi îxlas li ser rêka dînê Îslamê qaîm ragire.” Wî gotî: Ev e, ez ji dil teslîmî Rebbê hemî ‘alema bim; ku ez xalis û muxlisane her bi xwe şikandin ‘îbadetî bo Wî bitinê bikem.”[492]

Bi ber firehî me‘na dînê Îslamê eve ye; ku mirovê bê ‘uzur anku (yê ne yî lal û kerr bît) divêt, ew bi aşkirahî anku bi ezmanê xwe şehde bidet û bêjît: (**Eşheddu’el-Lailaheillallah we eşhedu’enne Muhemmede’r-Resûlullah**) û bi dilê xwe; bê şik û guman vê kelîma şehdê bizanîna me‘na wê ve bawer û tesdîq biket û bi e‘zayêt bedena xwe ‘emel bi wan tiştan jî biket; ewêt ku Muhemmed Pêxember-selat û selam li ser bin-ji teref Ellahu Te‘ala ve bo me pê hatî (eve her wekî; ruknêt dînê Îslamê û îmanê…)

492 Sûreta Beqere 131

Nexasima Tewhîdê bi her du qismêt wê ve; redd kirin û qebûl kirnê, anku jirê ve red û înkar kirna wan tiştan hemya ye; ewêt ku kelîma şehdê dibêjîte me; ey îmandar! Ferz û wacib e li ser te, ku tu jirêve hemî new'êt taxuta redd û înkar bikey û paşê di dûv ra tu Tewhîdê anku êkatiya Ellahu Te'ala; ku Ew Îlahekî bitinê ye yî bê şirîk û bê heval e qebûl bikey û her hemî new'êt 'îbadetî her bo Wî bitinê bikey û xwe ji hemî new'êt şîrkê dûr ragirî.

Nê her wekî em hemî baş dizanînin dînê Îslamê ji sê derece û merteba pêk têt anku Îslam, îman û Îhsan e:

Xudê Te'ala di van hersê ayetêt jêrî da li dûvêk behsê îman û Îslamê diket, belê ew hedîsa di dûv wan ra jî, ewa ku îmamê Muslîm ji îmamê 'Umer (Xudê ji wan her duka razî bît) rîwayet kirî ew jî behsê her sêka anku; Îslam, Îman û Îhsanê li gelêk û pêk ve diket.

Xudê Te'ala dibêjît:

قَالَتِ ٱلۡأَعۡرَابُ ءَامَنَّا قُل لَّمۡ تُؤۡمِنُواْ وَلَٰكِن قُولُوٓاْ أَسۡلَمۡنَا وَلَمَّا يَدۡخُلِ ٱلۡإِيمَٰنُ فِي قُلُوبِكُمۡ

"(Ey Muhemmed!) 'Erebêt koçer yê dibêjin: "Me îman û bawerî ya înandî." Tu bêje wa: "Hewe îman û bawerî ne înandiye." Belê, hema hûn bêjin: "Em yêt teslîm bîn û hatîne rayê." Îman û bawerî hêj ne çûye di nav cerg û dilêt hewe da"[493]

Xudê Te'ala dibêjît:

يَمُنُّونَ عَلَيۡكَ أَنۡ أَسۡلَمُواْۖ قُل لَّا تَمُنُّواْ عَلَيَّ إِسۡلَٰمَكُمۖ بَلِ ٱللَّهُ يَمُنُّ عَلَيۡكُمۡ أَنۡ هَدَىٰكُمۡ لِلۡإِيمَٰنِ إِن كُنتُمۡ صَٰدِقِينَ

493 Sûreta Hucurat 14

“(Ey Muhemmed!) Ew yê Busulman bîniya xwe li ser te dikene minet, tu bêje wa: “Hûn Busulman bîniya xwe nekene minet li ser min. Belê, Ellahu Te‘ala minet ya li hewe kirî; ku Wî hûn yêt rast e rê kirîn bo îman û baweriyê. Heke rast e ku hûn di rastgo ne.”[494]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّكَ لَا تُسۡمِعُ ٱلۡمَوۡتَىٰ وَلَا تُسۡمِعُ ٱلصُّمَّ ٱلدُّعَآءَ إِذَا وَلَّوۡاْ مُدۡبِرِينَ وَمَآ أَنتَ بِهَٰدِي ٱلۡعُمۡيِ عَن ضَلَٰلَتِهِمۡ إِن تُسۡمِعُ إِلَّا مَن يُؤۡمِنُ بِـَٔايَٰتِنَا فَهُم مُّسۡلِمُونَ

“(Ey Muhemmed!) Bê şik qet tu neşêy êka we bikey ku mirya haj wê heqiyê bibît ya ku tu dibêjî û yêt kerr jî gava wan pişt da; ew ji te revîn qet tu neşêy êka we bikey ku wan haj de‘we û gazya te bibît. (Ey Muhemmed!) Qet tu neşêy yêt kore ji nav wê xirhan û delaletê ya ku ew di nav da vedgevizin xilas bikey û bîniye ser rêka rast (anku ewêt xwe ji rêka heq didene paş), belê hema tu dişêy êka we bikey ku ewêt tên ji dil îman û baweriyê bi ayetêt Me tînin haj de‘we û gazya te bibît, eha nê hema her ew in Busulmanêt rast û durust.”[495]

Îslametî ew e ku mirov bi îman û bawerî û ji dil, di jîn û jiyara xwe da, ji hemî la ve û di hemî kar û barêt xwe da bi rast î û durustî xwe teslimî emr û fermanêt Xudayê xwe biken û her wan ne‘wêt ‘ibadet û ta‘etî ewêt ku Qur’ana Pîroz û sunneta pêxemberê Wî pê hatîn û aşkira kirîn bêkêm û zêdehî û bê riyakarî û her êk hindî şiyana xwe her bo Xudayê xwe bitinê biken, herdîsa divêt, Busulman xwe ji şîrkê û ehlê şîrkê jî dûr ragirin û bizanin û fehim

494 Sûreta Hucurat 17
495 Sûreta Neml 81

biken ku ew hemî dujmin û neyarêt dînê Îslamê û Busulmana ne anku hemî muşrîk, kafir û hemî mirovêt bid‘etçî, qet çû caran ew necihê baweriyêne û divêt, îmandar her li hemî hîle û pîlanêt wan baş dihişyar bin baweriya xwe nedene wan; çûnku ew hemî her dujmin û neyarêt aşkirane bo Busulmana li dinya yê.

Hedîsa Cîbraîlî (selam li ser bin) ewa meşhur, ya ku ji ‘Umerê kurê Xettabî (Xudê jê razî bît) hatiye rîwayet kirin ew dibêjît: (Rojekê em li dev Pêxemberê Xudê di rûniştî bîn, me dît ji nişka da mirovekî cilkêt wî gelek dispî û mûyêt wî direş, qet çu ‘elametêt rêvingiyê li ser didiyar ne bin, hate di nav me da û kesekê ji me jî ew nediniyasî; ka ew kî ye. Ew li hemberî Pêxemberî -selat û selam li ser bin- rûnişt, wî çokêt xwe dane çokêt wî û destêt xwe danadine ser rahnêt wî û paşê wî mirovî dest bi pirsyara kir û got:

-Ey Muhemmed! Ka tu bo min bêje Busulmanetî çi ye?

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- got:

- Busulmanetî; eve ye ku tu şehdekiyê bidey, bi ezmanê xwe bêjî û bi dilê xwe tesdîq û bawer bikey; ku jibilî Ellah Te‘ala qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin; ku durust bît mirov guhê xwe bidetê û di layiqî wê hindê bin ku mirov ‘îbadetî bo biket.

Herdîsa tu bêje; ez şehdekiyê didem; bi ezmanê xwe dibêjim û bi dilê xwe tesdîq û bawer dikem ku Muhemmed-selat û selam li ser bin- qasid û pêxemberê Xudayê Jorî ye û tu nivêja bike, zikatê bide, rojiyêt meha Remezanê bigrî û biçiye hecê heke ku tu bişêy.

Wi mirovî gote Pêxemberî -selat û selam li ser bin-: Te rast got.

Îmamê ‘Umer (Xudê jê razî bît) dibêjît: Em li wî mirovî mayne heyrî; hem yê pirsyarê diket û hem jî yê dibêjîte Pêxemberî: Te rast got. Îna wî mirovî paşê pirsiyar kir û got:

Dê ka tu bo min bêje; îman û bawerî çi ye?

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- got:

“Îman û bawerî; eve ye ku tu;

Îman û baweriyê bînî bi Xudayê Jorî, bi milyaketêt wî, bi kitêbêt wî, bi pêxemberêt wî, bi roja qiyametê û îman baweriyê bînî bi qedera xêr û şera; ku ew hemî ji

Xudê Te‘ala ne.

Dîsa wî mirovî gote:

Pêxemberî-selat û selam li ser bin-: Te rast got. Îna wî mirovî paşê pirsiyar kir û got: Ka tu bo min bêje; îhsan û qencî çi ye? Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- got: Îhsan; eve ye; tu we ‘îbadetî bo Xudê Te‘ala bikey her wekî ku tu Wî dibînî, nê heke tu wî nebînî, baş bawer bike Ew te dibînît.

Îna wî mirovî paşê pirsiyar kir û gote Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin-:

- Ka tu bo min bêje; wextê rabîna qiyametê kengê ye?

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- got:

Nê dizanîna wextê rabîna qiyametê da yê pirsyar jê tê kirin û yê pirsyar diket jî qet her du nuzanin ka kengê qiyamet dê rabît.

Îna wî mirovî paşê hema zû pirsiyar kir û gote Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin-:

Dê ka pa tu bo min behsê ‘elametêt rabîna qiyametê bike, ka çî û çî ne?

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- got:

Gava Busulmana welatêt kafiran fethekirin û carî zehvf bûn û ew carî; anku ew deyk ketne dibin emrê ‘eyalê xwe da yan jî gava te dît ‘eyalî bi çavê koletiyê berê xwe da deykûbabêt xwe; bi lê heytandin û paşve birin, yan demê te dît yêt pêxwas û rûs yêt feqîr û şivanêt pezî di çêkirna avahiyêt bilin da yêt ber êkûdu ra diken.

‘Umerê kurê Xetabî (Xudê jê razî bît) dibêjît:

-Paşê ew mirov rabû û çû.

Vêca paşê ez qederekê mam, îna Pêxemberê Xudê–selat û selam li ser bin- got:

Ey ‘Umer! Erê, te zanî Ew ê pirsyar dikirin ew kî bû?

‘Umer dibêjît min got:

Xudê û Pêxemberê Wî çêtir dizanin ka ew kî bû.

Pêxemberê Xudê–selat û selam li ser bin- got:

Ew Cîbraîl bû (silav li ser bin), ew hatibû da ku hewe bi ‘elimînîte dînê hewe).[496]

496 Muslîm

## ŞERT Û RUKNÊT DÎNÊ ÎSLAMÊ

Dinê Îslamê hem ‘eqîde ye û hem jî şirî‘ete, belê dinê Îslamê bi ‘eqîda xwe û şirî‘ete xwe dînekî kamil û tekûze ji hemî rexan ve; anku di derbara hemî kar û barêt dinya û axretê da.

Pîştî zanîn û fehim kirina ‘eqîdê ferz û lazim e em ferman û emrêt Xudayê Jorî bicih bînin ku dibêjine wan ruknêt dînê Îslamê:

Stûn û bingehêt dînê Îslamê ev her pênce ne:

Gotina kelîma şehdê, kirna nivêjan, dana zikatê, girtina rojiyêt meha Remezanê, çûna hecê ne.

Divêt, her Busulmanekî bê‘uzur; ew van ruknêt dinê Îslamê bi aşkirahî anku kelîma şehdê bi devê xwe bêjît û van hercar ruknêt dî jî anku; nivêj, rojî, zikat û hecê bi aşkirahî edabiket û pêkbînît.

1- Ruknê ‘ewwil; gotina kelîma şehadetê ye: Ew jî eve ye ku mirov bi ezmanê xwe bêjît:

أَشْهَدُ أَنْ لاَ إِلَهَ إِلاَّ اللهُ وَأَشْهَدُ أَنَّ مُحَمَّداً رَسُول الله

**Eşheddu’el-Lailaheillallah we eşhedu’enne Muhemmede’r-Resûlullah**.” Me‘na wê bi kurtî: “Ez şehdekiyê didem û bi ezmanê xwe dibêjim û bi dilê xwe tesdîq û bawer dikem jibilî Ellah Te‘ala qet çu xudayêt dî; me‘budêt biheq nînin û nabin; ku dilayiq bin mirov ‘îbadetî û ta‘etî bo biket û her dîsa ez şahidiyê didem û bi ezmanê xwe dibêjim û bi dilê xwe tesdîq û bawer dikem ku Muhemmed -selat û selam li ser bin- kurê ‘Ebdullahê kurê ‘Ebdulmuttelibî, qasid û pêxemberê Xudayê Jorî ye; Xudayê Jorî ew yê hinartî û birêkirî da ku ew rêka heq û

rast anku Tewhîdê û kar û barêt Busulmanetiyê nîşa hemî ecina û mirovan bidet.

Divêt, baş bizanîn îman û baweriya bi Ellah Te'ala û bi Muhemmed Pêxemberî -selat û selam li ser bin- pêkve digirêdayîne; êk bêyî ya dî ya durust nîne; anku divêt, her duk li gelê bêne gotin, ev e her weku ku em her dibêjîn **:(La îlahe îlallah -Muhemmedur-resûlullah)** ku kelîma Tewhîdê ye.

Yan jî li demê em dibêjîn: (**Eşhedu ella îlahe îlallah we eşhedu enne Muhemmeder-resûlullah**) ku ev e jî kelîma şehdê ye,

Xudê Te'ala dibêjît:

فَاعْلَمْ أَنَّهُ لَا إِلَٰهَ إِلَّا اللَّهُ

"Baş bizanîn ji Xudayê Jorî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin ku dilayiqî guhdan û 'îbadetî bin; ku bo wan bête kirin."[497]

Xudê Te'ala dibêjît:

شَهِدَ اللَّهُ أَنَّهُ لَا إِلَهَ إِلَّا هُوَ وَالْمَلَائِكَةُ وَأُولُو الْعِلْمِ قَائِمًا بِالْقِسْطِ لَا إِلَهَ إِلَّا هُوَ الْعَزِيزُ الْحَكِيمُ

"Ellahu Te'ala şehdekî da; ku bê şik ji Wî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin. Milyaket û ew 'alim û zana jî; ewêt ku her 'edaletê bicih tînin hemî pêk ve şehdekiyê diden ku ji Ellahu Te'ala pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin. Ellahu Te'ala yî xurt û jêhatî ye û yî xudan hîkmet e (di hemî kar û kirin û gotinêt xwe da)."[498]

---

497 Sûreta Muhammed 19
498 Sûreta Alî 'Îmran 18

2-Ruknê duwê nivêj e; nivêj ya ferz e li ser wî mirovî yê ku yî Busulman û bi aqil û gehiştbîte heddê bulûxê, ku ew heru; hindî yî sax rojê pênç nivêjêt ferz biket; anku ferza nîvro, ku çar rika'et e. ferza êvari ku ew jî çar rika'et e, ferza mexrebê sê rika'et e, ferza 'eyşa jî çar rika'et e û ferza sipêdê du rika'et e.

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنَّ الصَّلاَةَ كَانَتْ عَلَى الْمُؤْمِنِينَ كِتَابًا مَّوْقُوتًا

"Bê şik nivêjkirin Ferzeka pêtivî ye li ser hemî îmandaran,

divêt, ew her nivêjekê di dem û wextê wê yî aşkira da biken."[499]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَأْمُرْ أَهْلَكَ بِالصَّلَاةِ وَاصْطَبِرْ عَلَيْهَا لَا نَسْأَلُكَ رِزْقًا نَحْنُ نَرْزُقُكَ وَالْعَاقِبَةُ لِلتَّقْوَى

"(Ey Muhemmed!) Tu emrî li mala xwe û lêzim û kes û karêt xwe bike bi kirna nivêjan û tu bi xwe jî her bi sebir û tehemûl yî berdewam be li ser kirna wan. Qet Em çu rizqî ji te naxwazîn, nê hema her Em rizqî dideyne te û 'aqûbeta bixêr hema her bo mutteqî û dîndaran e."[500]

Xudê Te'ala dibêjît:

رَبِّ اجْعَلْنِي مُقِيمَ الصَّلاَةِ وَمِن ذُرِّيَّتِي رَبَّنَا وَتَقَبَّلْ دُعَاء

"Ey Rebbê min! Tu min, û 'eyalê min; dûndeha min, me hemyan li ser rêka dînê xwe qayim ragire; ku em her

499 Sûreta Nîsa 103
500 Sûreta Ta ha 132

berdewam bi rast î û durustî (bo Te) nivêjan bikeyn. Ey Rebbê me! Tu vê du‘a min qebûl bike.”[501]

3-Ruknê siyê, girtina rojiyêt meha remezanê ye, yê bişêt bigrît, yê ku çu ‘uzrêt şir‘î nebin, fer û pêtivî ye li ser wî ku ew rojiyêt meha remezanê bigrît.

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَمَنْ شَهِدَ مِنْكُمُ الشَّهْرَ فَلْيَصُمْهُ وَمَنْ كَانَ مَرِيضًا أَوْ عَلَى سَفَرٍ فَعِدَّةٌ مِنْ أَيَّامٍ أُخَرَ يُرِيدُ اللَّهُ بِكُمُ الْيُسْرَ وَلَا يُرِيدُ بِكُمُ الْعُسْرَ وَلِتُكْمِلُوا الْعِدَّةَ وَلِتُكَبِّرُوا اللَّهَ عَلَى مَا هَدَاكُمْ وَلَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ

“Heyva Remezanê ew heyve, ya ku Ellahu Te‘ala Qur’ana kerîm tê da hinartiye xwarê; ku ew rêka hîdayetê ye bo mirovan û bi delîlêt aşkira rastiyê û heqiyê ji batilî cuda diket. Vêca heçî kesê ji hewe bigehîte vê heyva Remezanê, bila ew rojiya bigrît. Belê, heçî kesê yî nisaxbît yan jî rêving bît, bila ew hindî hejmara wan rojêt xwarîn di hinde rojêt dî da bigrît û qeza biket. Ellahu Te‘ala bo hewe hema her ya bi sanahî divêt; qet Wî bo hewe ya bi zehmet û îza nevêt. Eha ev e, Wî bo hewe bi sanahî êxist; da ku hûn hejmara rojiyêt xwe timam biken û da ku hûn her navê Ellahu Te‘ala mezin ragirin û bêjin, Wî ji kerema xwe hûn yêt înandîne ser rêka heq û rast; da ku hûn her şukra Wî biken.”[502]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُواْ كُتِبَ عَلَيْكُمُ الصِّيَامُ كَمَا كُتِبَ عَلَى الَّذِينَ مِن قَبْلِكُمْ

501 Sûreta Îbrahîm 40
502 Sûreta Beqere 184

“Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Rojî girtin, li ser hewe hate ferzkirin her wekî ku li ser wan ummetêt berî hewe hatiye ferz kirin, ev e da ku hûn xwe biparêzin ji bê-emriya Ellahu Te‘ala.”[503]

4-Ruknê çarê, dana zekatê ye; zikat Ferz e li ser wî kesî yê ku yî maldar û zengîn bît; ku ew her sal zikatê ji malê xwe derbêxît û bidet, vêca maldar û zengîniya wî çi bi para; zêr û zîvî, pez û hêwana bît yan jî bi dexludanî û fêqî bît; divêt, ew her sal zikatê jê derbêxît û bidet.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَأَقِيمُوا الصَّلَاةَ وَآتُوا الزَّكَاةَ وَارْكَعُوا مَعَ الرَّاكِعِينَ

“Hûn her bi rast î û durustî nivêjan biken û ji dil û bi timamî zekatê ji malê xwe biden û hûn her li gel nivêjkera (bo min) nivêjan biken (ye‘nî hûn her ligel îmandaran bin).”[504]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَالَّذِينَ هُمْ لِلزَّكَاةِ فَاعِلُونَ

“Îmandar ew in; ewêt ku bi micidî şol, kara û xebatê diken da ku ew jî, ji dil zekatê ji malê xwe biden.”[505]

5-Ruknê pêncê jî, çûna heccê ye; hec Ferz e li ser hemî kesêt maldar û zengîn, çî mêr yan jin; yêt ku di bê‘uzur, belê divêt, çu dujmin û mani‘ jî di rêka çûna hecê da nebin, ferz û wacib e li ser her Busulmanekî jêbêt ku ew di ‘emrê xwe da carekê biçîte hecê; anku qesta Mekkehê; mala Xudayê Jorî; Ke‘ba pîroz biket; tewaf biket, rukun

503 Sûreta Beqere 183
504 Sûreta Beqere 43
505 Sûreta Mu’minûn 4

û wacibat û pêtiviyêt heca xwe anegora şirî‘etî gotîn pêk bînt û bo Xudê Jorî timam biket.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلِلَّهِ عَلَى النَّاسِ حِجُّ الْبَيْتِ مَنِ اسْتَطَاعَ إِلَيْهِ سَبِيلًا وَمَنْ كَفَرَ فَإِنَّ اللَّهَ غَنِيٌّ عَنِ الْعَالَمِينَ

“Heqê Ellahu Te‘ala ye li ser hemî mirovan ku ew bo edakirna hecê biçne seredana Mizgefta bi siyanet (ewa ku li bajêrê Mekkeha xudanqedr), vêca heçî kesê jêbêt û bişêt divêt, ew bi rêkekê xwe bigehînîte wê derê (biçîte hecê). Belê, heçî kesê înkara vê hindê biket, bila ew baş bizanît, bê şik Ellahu Te‘ala yî bêminet e ji hemî xelk û ‘alema.”[506]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَأَتِمُّوا الْحَجَّ وَالْعُمْرَةَ لِلَّهِ

“Ey gelî Busulmana!) Li demê hûn çûne hecê yan ‘ûmrê, hûn bo Ellahu Te‘ala hec û ‘ûmra bi timamî bicih bînin.”[507]

506 Sûreta Alî ‘Îmran 97
507 Sûreta Beqere 196

# ÎMAN Û BAWERÎ

Fer e bizanîn îman û bawerî bi van her sê tiştan li dev mirovî peyda dibît:

1- Bi gotina ezmanî; ku heke mirov yî bê‘uzur bît, divêt, kelîma şehdê mirov bi ezmanê xwe bi aşkirahî bêjît.

2- Bi bawer kirina dilî; anku divêt, mirov bi dilê xwe kelîma şehdê bawer û tesdîq biket.

3- Bi ‘emel kirina bi e‘za û endamêt bedenê; ye‘nî divêt, yê Busulman bi Busulmanetiya xwe bijît; şerî‘etê dînê Îslamê qebûl biket û her bi tetbîqkirin pê ‘emel biket.

Îman û bawerî bi kirna ‘îbadetî, xêr û qenciya zêde dibît û bi kirna guneh û xirabiyan jî kêm û lawaz dibît; anku xudanê îman û baweriya mezin û zêde, ew pitir ji Ellahu Te‘ala ditirsît; gunehêt wî di kêmtirin ji wî kesî yê ku îman û baweriya wî ya kêm û lawaz bît.

Îmamê Şafi‘î (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Hemî sihabiya û tabi‘iya û ewêt dûv wan ra jî û hindî ‘alim û zanayêt ku em gehiştînê û me dîtîn jî, gotina wan hemyan li ser vê hindê êk bû; anku wan hemyan digot Îman:

Gotina bi ezmanî, ‘emel kirina bi e‘za ye anku bi endamêt bedenê ye û bawer û tesdîq kirina bi dilî ye, êk ji van her sêka bêyî her dukêt dî çênabît û durust nîne).[508]

Muhemmedê kurê ‘Ebdulwehhabî jî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Qet çu xîlaf di navbeyna ummetê da (anku ‘alim û zana da) nîne; anku gotina wan hemyan êk e li ser vê hindê; ew hemî dibêjin: Têgehiştina Tewhîdê; îman û baweriya bi Xudê Te‘ala; tesdîq kirna bi dilî, gotina bi ezmanî û ‘emelkirina bi e‘zaye anku bi cih înana emr û

508 Ed-Durer Es-Seniye

nehyêt Xudê Te‘ala ye, heçî kesê êk ji van her sêka jê ya kêm bît Busulmanetiya wî ne ya durust e).[509]

Îsma‘îlê Espehanî, Ew ê ku neqil nav dibêjnê; Qewwamu-Sunne (Xudê jê razî bît) dibêjît: Me‘na îman û baweriyê; kirna wan tiştaye; ewêt ku Xudê Te‘ala pê ji mirovî razî bît û xwe dûr kirin û terk kirna hemî tiştêt nedurust û heram e.[510]

Divêt, her Busulmanek van her şeş ruknêt îman û baweriyê di dilê xwe da bê şik û guman bi nepenî bihebînît û tesdîq û bawer biket.

Heçî kesê êkê ji van her şeş ruknêt îman û baweriyê bawer neket; ew ji nav milet û dînê Îslamê derdikevît û dibîte kafir.

Bi kurtî îman û bawerî ji van her şeş rukna pêktêt; anku divêt, yê îmandar, îman û baweriyê bînît bi Xudayê Jorî, bi milyaketêt Wî, bi kitêbêt Wî, bi pêxemberêt Wî, bi roja qiyametê û bi qedera xêr û şera; ku hemî ji teref Xudê Te‘ala ne.

Yê îmandar gava îman û bawerî bi rukun û bingehêt îmanê înand, di wê gavê da wacib e li ser wî ku ew van rukun û bingehêt îmanê bi ezmanê xwe bêjît, bi dilê xwe bawer û tesdîq biket û di jîn û jiyara xwe da jî pê ‘emel biket anku bi e‘zayêt bedena xwe.

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît, Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî:

(Ta û çeqêt îmanê heftê û çendek in, tayê ji hemyan bilndtir, bi ezmanî gotina; La Îlahe Îllallahe û tayê ji hemyan nizimtir jî; Ew e ku mirov tiştekî; ewêt ku ezyet

509 Ed-Durer Es-Seniye

510 ‘Eqîda îmamê Şafi‘î, d/ ‘Ebdullah kurê ‘Ebdul‘ezîzê ‘Enqerî

pê çêdibît li ser rêka mirovan; ji ber dest û piya raket û pavêjît. Şerim û heya jî tayeke ji îman û baweriyê).[511]

Xudê Te'ala dibêjît:

آمَنَ الرَّسُولُ بِمَا أُنْزِلَ إِلَيْهِ مِنْ رَبِّهِ وَالْمُؤْمِنُونَ كُلٌّ آمَنَ بِاللَّهِ وَمَلَائِكَتِهِ وَكُتُبِهِ وَرُسُلِهِ لَا نُفَرِّقُ بَيْنَ أَحَدٍ مِنْ رُسُلِهِ

"Pêxemberî îman û bawerî înand bi wê Qur'anê; ewa ku bi wehî ji layê Rebbê wî ve bo wî hatiye xwarê û îmandaran jî îman û bawerî pê înand û wan hemyan îman û bawerî înand bi Ellahu Te'ala û milyaketêt Wî û bi kitêbêt Wî û pêxemberêt Wî û ew dibêjin: "Em çu ferq û cudahiyê naêxîne di navbeyna çu pêxemberêt Wî da (anku em îman û baweriyê bi hemyan tînîn)."[512]

'Umerê kurî xettabî (Xudê jê razî bît) dibêjît, Pêxemberî-

Selat û selam li ser bin-yê gotî: Îman û bawerî eve ye:

(Ku mirov îman û baweriyê bînît bi Xudayê Jorî, bi milyaketêt Wî, bi kitêbêt Wî, bi pêxemberêt Wî, bi roja qiyametê û bi qedera xêr û şera ye; ku hemî bi teqdîra Xudê Te'ala peyda dibin.[513]

Xudê Te'ala dibêjît:

أَوَمَن كَانَ مَيْتًا فَأَحْيَيْنَاهُ وَجَعَلْنَا لَهُ نُورًا يَمْشِي بِهِ فِي النَّاسِ كَمَن مَّثَلُهُ فِي الظُّلُمَاتِ لَيْسَ بِخَارِجٍ مِّنْهَا ۚ كَذَٰلِكَ زُيِّنَ لِلْكَافِرِينَ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ

511 Muttefequn 'eleyh
512 Sûreta Beqere 285
513 Ehmed Şakir (rehma Xudê lê bît) yê gotî: Îsnada vê hedîsê ya rast e.

“Erê ma Ew ê yî mirî bît (anku yî bê îman bît) û paşê Me, ew sax kirbîte ve (înabîte ser rêka hîdayetê) û Me ronahiyek bo çêkirî û ew pê di nav mirovan da bêt û biçît, erê ma ew wekî wî ye, yê ku di nav taryatiyêt kafiryê da; Ew ê ku qet neşêt ji nav derkevît? Eha her wesa ew şol û kar bo kafiran dihatine xemilandin; ewêt ku wan dikirin.”[514]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَّيْسَ الْبِرَّ أَن تُوَلُّوا وُجُوهَكُمْ قِبَلَ الْمَشْرِقِ وَالْمَغْرِبِ وَلَٰكِنَّ الْبِرَّ مَنْ آمَنَ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ وَالْمَلَائِكَةِ وَالْكِتَابِ وَالنَّبِيِّينَ

“Başî û çakî ne ew e ku hûn berê xwe bidene roj hilat û roj ava, belê başî û çakiya rast ew e; ku mirov îman û baweriyê bînit bi Ellahu Te‘ala, bi roja qiyametê, bi milyaketa, bi kitêba û bi pêxemberan.”[515]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا آمِنُوا بِاللَّهِ وَرَسُولِهِ وَالْكِتَابِ الَّذِي نَزَّلَ عَلَىٰ رَسُولِهِ وَالْكِتَابِ الَّذِي أَنزَلَ مِن قَبْلُ ۚ وَمَن يَكْفُرْ بِاللَّهِ وَمَلَائِكَتِهِ وَكُتُبِهِ وَرُسُلِهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ فَقَدْ ضَلَّ ضَلَالًا بَعِيدًا

“Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Hûn xwe li ser wê îman û baweriyê qayim ragirin; ewa ku hewe Înandî bi Ellahu Te‘ala û Pêxwemberê Wî û bi wê Qur’anê ya ku Wî bo Pêxemberê xwe hinartiye xwarê û bi wan kitêba jî ewêt ku Wî berî (Qur’anê) hinartîne xwarê. Heçî kesê înkara Ellahu Te‘ala û milyaketêt Wî û kitêbêt Wî û

514 Sûreta En‘am 122
515 Sûreta Beqere 177

pêxemberêt Wî û roja qiyametê biket bê şik ev e, ew bi xirhaneka kûr û dûr ji rêka heq derket û kafir bû."[516]

Di nav hedîsa Cîbraîlî da (selam li ser bin) ewa meşhûr, ewa ku ji 'Umerê kurê Xettabî (Xudê jê razî bît) hatiye rîwayet kirin, hosa ya hatî: (Îman û baweriyê bînî bi Xudayê Jorî, bi milyaketêt wî, bi kitêbêt wî, bi pêxemberêt wî, bi roja qiyametê û bi qedera xêr û şera; ku hemî ji layê Xudê Te'ala ne).[517]

516 Sûreta Nîsa 136
517 Muslim

# RUKNÊT ÎMANÊ ŞEŞ İN

1- Ruknê ‘ewilî Îman û baweriya bi Xudê Te´ala ye.

îman û baweriya bi Xudê Te´ala eve ye; ku mirov bê şik û şuphe bawer biket; ku Xudê Te‘ala êkî bitinê ye, yî saxe û heta hetayê jî Ew dê sax mînît, Ew zatekî ezelî û ebedî ye; ye‘nî heyîna Wî ya bêberahîk û dûmahîke, ew ji kesê nebiye û qet kesek jî ji Wî ne biye, yî bê şirîk û bê heval e, hemî sîfetêt kemalê yêt Wî ne, Ew ji hemî qusûrî û kêmasiyan yî pak û beriye, Wî bitinê hemî tişt ji çûnehiyê yêt dayn û xuluqandîn, hemî tişt her muhtacî Wî ne, qet Wî muhtacî bi çu tiştan û kesekê nîne û nabît, her Ew bitinê Xuda û xudanê ‘erd û ‘esmanan û hemî tişta ye, Ew her hemî tiştan bi timamî dibînît û ka ew di çî halî dane û her Ew bitinê bêwasîte û harîkarî kar û bar; tedbîra hemî ‘alema û mexluqêt xwe birêve dibet, her Ew bitinê layiqî û hejî wê hindê ye ku mirov hema her medhu senayêt Wî biket û guhê xwe bidete Wî; emr û nehyêt Wî bi cih bînît û her hemî new‘êt ‘îbadetî û ta‘etî bo Wî bitinê biket.

Şeyxulîslam Îbin Teymiyê Herranî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Ew delîlêt delaletê dikene ser îsbatkirna sani‘ê vê kaînatê (û hemî ‘alemê û mexluqata) û qudret û şiyana Wî ji hejmarê diderketîne, belê pa yê Xudê Te´ala çu burhan û nûrhê bo çêneket û nedetê, ma kî yî we heye ku nûrhekê bo wî çêket û bidetê?[518]

Bi rast î mirovê aqilê wî yî timam û durust bît, heke ew hûrik berê xwe bidete heçî tiştê heyî di vê dinya yê da îleh ew dê muhra heyîna Ellahu Te‘ala, ya qudret û mezinahiya Wî li ser bînît bi aşkirahî.

518 Ji kitêba en-Nebuwat, ya Îbin Teymiyye

Xudê Te'ala dibêjît:

سَنُرِيهِمْ آيَاتِنَا فِي الْآفَاقِ وَفِي أَنْفُسِهِمْ حَتَّى يَتَبَيَّنَ لَهُمْ أَنَّهُ الْحَقُّ أَوَلَمْ يَكْفِ بِرَبِّكَ أَنَّهُ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ شَهِيدٌ

"Em dê, delîl û nîşanêt (heyîn û şiyana) xwe nîşa mirovan deyn li kujiyêt 'erdî û li ber tarîreşkêt 'esmanî û di nav nefsêt wan bi xwe da jî; da ku baş bo wan diyar û aşkira bît ku ev Qur'ane ya heq û rast e. Erê, ma nebese (bo rastiya vê hindê) ku bê şik Rebbê te bi dîtin û zanîna xwe şahide li ser hemî tiştan?"[519]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمَنْ يُؤْمِنْ بِاللَّهِ يَهْدِ قَلْبَهُ وَاللَّهُ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلِيمٌ

"Heçi kesê ji dil îman û baweriyê bînît bi Ellahu Te'ala, Ellahu Te'ala, dê dilê wî înîte ser rêka heq û rast û dê qayim ragirît. Nê Ellahu Te'ala hemî tiştan bi timamî dizanît."[520]

2- Ruknê duwê, îman û baweriya bi milyaketan e.

Îman û baweriya bi milyaketa; eve ye mirov bê şik û şuphe bawer biket; ku li ber emrê Xudê Te'ala gelek milyaket yêt heyn, ji Xudê Te'ala pêvetir qet kesek nuzanît ka hejmara wan çende, ew 'eskerê Xudê Te'ala ne, Xudê Te'ala ew ji nûrhê yêt xuluqandîn, cismê wan yî letîf û şefaf e, ew ne dinêrin û ne dimêne, ew we dicuwanin heke mirovan ew ditibane, qet wan nedişiya bo xwe çu ked û kesba bikeyn; çavêt wan ji dîdara wan têr nedibin; ew da rawestin hema her berê xwe bidene wan.

519 Sûreta Fussîlet 53
520 Sûreta Texabin 11

Ew çu na xwen û vexwen, belê xwarin û vexwarina wan hema tesbîh û tehlîlin bê westan û rawistan; anku ew hema her medh û senayêt Xudê Te'ala diken, ew emrê Xudê Te'ala bi timamî bi cih tînin û qet çû caran ew bê-emriya Xudê Te'ala naken û ew her daîmî bi şev û roj medh û senayêt Wî diken û bê-rawistan her 'îbadetî bo Wî tinê diken, her dem û gavê ew li ber emrê Wî di amade ne.

Wa jî hinde serok û serdar yêt heyn ev e; wekî Cibraîlî (selam li ser bin) ku ew milyaketê wehyê ye, Mikaîlî (selam li ser bin) ew milyaketê baranê û şînkatî; dexl û dana ye, Îsrafîlî (selam li ser bin) ew milyaketê pifkirna sorê ye û Melek el-mewt anku İzraîl (selam liser bin) ew jî milyaketê sitandina ruha ye.

Xudê Te'ala dibêjît:

وَإِنَّ عَلَيْكُمْ لَحَافِظِينَ كِرَامًا كَاتِبِينَ يَعْلَمُونَ مَا تَفْعَلُونَ

"Bê şik milyaket şehnetiyê li hewe diken (anku ew her û daîmî hemî kar û 'emelêt hewe dinivîsin), ew (milyaket) gelek birûmet û xudan qedr in, heçî tiştê hûn diken ew wan hemyan dinivîsîn û ew pê diheshin û dizanin ka hûn çî diken."[521]

Xudê Te'ala dibêjît:

أَمْ يَحْسَبُونَ أَنَّا لَا نَسْمَعُ سِرَّهُمْ وَنَجْوَاهُمْ بَلَى وَرُسُلُنَا لَدَيْهِمْ يَكْتُبُونَ

"Yan jî, ma ew we hizir diken ku Em bi sir û nepeniyêt wan naheshîn û wê sêwduwê ya ku ew di nav xwe da diken me hajê nabît? Nexêr, ne we ye, nê heta qasidêt

521 Sûreta Înfîtar 13

Me; ewêt ku li nik wan, ew wan tiştêt wan hemyan dinivîsin."[522]

3- Ruknê siyê, baweriya bi kitêbêt Xudê Te'ala ye.

Îman û baweriya bi kitêbêt Xudê Te'ala eve ye; mirov bê şik û şuphe bawer biket ku Xudê Te'ala gelek kitêp yêt hinartîn, belê ji Xudê Te'ala pêvetir qet kesek nuzanît ka hejmara wan kitêba hemyan çende.

Xudê Te'ala çar kitêbêt mezin bi wasita Cîbraîlî ('Eleyhî sellam) yêt hinartîn; Tewrat bo Musayî (silav li ser bin) ya hatî, Încîl bo 'İsayî (silav li ser bin) ya hatî, Zebur bo Dawudî (silav li ser bin) ya hatî, Suhuf bo Îbrahîmî û Musayî (silav li ser wan bin) yêt hatî û Qur'an jî bo Muhemmedî - Selallahu eleyhî we selem- ya hatî.

Ew hedîsa behsê sed (100) suhûfa diket ya batile û direw e. Nê qur'ana pîroz hema bo me behsê suhûfêt Îbrahîm û Musayî bitinê diket û dibêjît:

إِنَّ هَـذَا لَفِي الصُّحُفِ الْأُولَى صُحُفِ إِبْرَاهِيمَ وَمُوسَى

"Bê şik ev hukum û ehkamêt hatîne gotin di (kitêb û) suhûfêt berê da (anku di kitêb û) berperêt Îbrahîmî û Mûsay da jî yêt hatîn."[523]

Îbrahîm Pêxember; dostê Xudê Te'ala bû û Musa jî kelîmê Xudê Te'ala bû (selamêt Xuda li ser wan her duka bin).

Wasîlê kurê el-Esqelî (Xudê jê razî bît) dibêjît, Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: (Suhûfêt Îbrahîm Pêxember (selam li ser bin) şeva 'ewilî ji remezanê yêt hatîn û Tewrat piştî şeş (6) roj ji remezanê borîn ya

522 Sûreta Zuxruf 80
523 Sûreta E'la 18

hatî û İncîl piştî sêzde (13) roj ji remezanê borîn ya hatî û Furqan jî anku (Qur'an) piştî bîstûcar (24) roj ji remezanê borîn ya hatî).[524]

Belê piştî hatina Qur'ana Pîroz hukmê wan hemyan yê betal bî û ew hemî yêt nesxe bîn heta qiyametê.

Qur'ana Pîroz gotina Xudê Te'ala ya qedîme; xwandina wê 'ibadet e, ew bi wasîta Cibraîlî (silav le ser bin) ji nik Xudê Te'ala bo Muhemmed pêxemberî -selat û selam li ser bin-ya hatî, Qur'ana Pîroz li axirê zemanî dê zivirîte ve bal Xudê Te'ala. Qur'an kelamê Xudê Te'ala ye, Xudê Te'ala bi deng û herfa yê pê axivtî.

Cibraîlî (silav li ser bin) Qur'ana Pîroz ji Xudê Te'ala ya guhlê bî, her wekî ku Musayî (silavêt Xudê li ser bin) kelamê Wî guhlê bî, paşê Cibraîlî ew ji dev Xudê Te'ala ya bo Muhemmed pêxemberî -selat û selam li ser bin-ya înandî. Qur'ana Pîroz jî her wekî; Tewrat, Zebûr û Încîlê kelam û gotina Xudê Te'ala ye.

Her wekî em hemî baş dizanînin, gava êkî ji me bo xwe, cîhazek kirî, ev e wekî; kompîtur, televizyon, qlima û mekîna şûştna cilka îlleh kitêbkeka bûçûk li gel didene mirovî, di wê kitêbkê da hinde zana yê nivîsî û gotî: Heke tu, ey yê te ew cîhaz kirî heke tu anegora me; anku her wekî me di vê kitêbkê da nivisî û gotî, bi vî cîhazê xwe 'emel bikey û bideye şolî; tu dê xêrê jê bînî û ew zû bi zûy xirab nabît.

Vêca teşbîh nebît 'eynen her wesa Qur'ana Pîroz jî keteloka me mirova û însana ye; çunku em mirov jî cîhazekî qudretîne; anku Xudê Te'ala em yêt xulqiyetkirîn û çêkirîn û dayne ser vê dinyayê, nê heke em jî anegora vê Qur'ana xwe; ewa ku Xudê Te'ala ji kerema xwe bi

524 Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjîtv ev: Ev hedîs e ya sehîh e

wasîtey Cibaraîlî (selam li ser bin) bo Pêxemberê me yê axirê zemanî Muhammedî -selat û selam li ser bin-hinartî pê ‘emel bikeyn, em dê di dinya û axretê da xêrê ji xwe û ‘eyalê xwe bînîn û em bi silametî dê dirêjiyê deyne jîn û jiyara xwe û dê pê rûspî çine huzûra Rebbê xwe jî li axretê.

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُولُوا آمَنَّا بِاللَّهِ وَمَا أُنْزِلَ إِلَيْنَا وَمَا أُنْزِلَ إِلَى إِبْرَاهِيمَ وَإِسْمَاعِيلَ وَإِسْحَاقَ وَيَعْقُوبَ وَالأَسْبَاطِ وَمَا أُوتِيَ مُوسَى وَعِيْسَى وَمَا أُوتِيَ النَّبِيُّونَ مِنْ رَبِّهِمْ لاَ نُفَرِّقُ بَيْنَ أَحَدٍ مِنْهُمْ وَنَحْنُ لَهُ مُسْلِمُونَ

“Ey gelî îmandaran! Hûn jî bêjin: “Me îman û bawerî ya înandî bi Ellahu Te‘ala û bi wê Qur’anê ya ku bo Me hatiye xwarê û bi wê ya bo Îbrahîmî, Îsma‘îlî, Îshaqî, Ya‘qûbî û nevyêt wan jî hatiye xwarê û bi ewa bo Mûsay, ‘Îsayî hatî û bi wê wehyê jî ewa ku bo hemî pêxemberan hatî ji def Rebbê wan û qet em çu ferq û cudahiyê naêxîne di navbeyna kesekê ji wan da û em ji dil yêt teslîmî Ellahu Te‘ala bîn.”[525]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّا أَوْحَيْنَا إِلَيْكَ كَمَا أَوْحَيْنَا إِلَى نُوحٍ وَالنَّبِيِّينَ مِن بَعْدِهِ وَأَوْحَيْنَا إِلَى إِبْرَاهِيمَ وَإِسْمَاعِيلَ وَإِسْحَقَ وَيَعْقُوبَ وَالأَسْبَاطِ وَعِيسَى وَأَيُّوبَ وَيُونُسَ وَهَارُونَ وَسُلَيْمَانَ وَآتَيْنَا دَاوُودَ زَبُورًا

“(Ey Muhemmed!) Bê şik Me, wehî bo te ya hinartî, her wekî ku Me, wehî bo Nûhî hinartî û bo wan pêxemberêt piştî wî jî hinartîn. Me wehî bo Îbrahîmî, Îsma‘îlî, Îshaqî, Ye‘qûbî û nevyêt Ye‘qûbî û ‘Îsayî, Eyyûbî,

525 Sûreta Beqere 136

Yûnusî, Harûnî û Sileymanî jî hinartibû. Me Zebûr jî da bû Dawudî."[526]

Ew kitêb û Suhufêt Xudê Te'ala bi wasîteyî Cibraîlî -'Eleyhî s-selam- bi weyî bo pêxemberan -silavêt Xudê Te'ala li ser wan hemyan bin- hinartîn, ew hemî kelamê Xudê Te'ala ne, pêxemberan herekê li zemanê xwe, ew wehya bo wan hatî ji teref Xudê Te'ala hemî ya bo mirovêt zemanê xwe gotî, belê hukum û xwandina wan kitêb û Suhufa hemyan ewêt ku Xudê Te'ala hîngê û wî zemanî hînartîn piştî hatina Qur'ana Pîroz, ew kitêb û şerî'etê wan Pêxemberan hemyan yêt nesxe û betal bîn.

Divêt, bizanîn Qur'ana Pîroz bi kurtî nîvişk û naveruka wan kitêb û suhufa hemiya ye; ewêt ku Xudê Te'ala bi wehî hinartîn,

Xudê Te'ala dibêjît:

وَأَنزَلْنَا إِلَيْكَ الْكِتَابَ بِالْحَقِّ مُصَدِّقًا لِّمَا بَيْنَ يَدَيْهِ مِنَ الْكِتَابِ وَمُهَيْمِنًا عَلَيْهِ

"(Ey Muhemmed!) Me, Qur'an ku ew kitêbeka heq û rast e, bo te ya hinartiye xwarê, Qur'an wan kitêbêt berî xwe rast dertêxît (û tesdîq diket) û şahide li ser wan kitêbêt berî xwe jî."[527]

4- Ruknê çarê; îman û baweriya bi pêxemberêt Xudê ye-

Selewat û silavêt Xudê li ser wan hemyan bin-.

Me'na îman û baweriya bi wan pêxemberan, ewêt ku Xudê Te'ala hinartîn eve ye; ku divêt, mirov bê şik û şuphe bawer biket ku Xudê Te'ala gelek pêxember yêt hinartîn; da ku ew Tewhîdê û dînê heq nîşa ecina û

526 Sûreta Nîsa 163
527 Sûreta Maîde 49

mirovan biden, em bêferq û cudahî îman û baweriyê bi wan hemyan tînîn û bi hindî tiştêt wan zar Xudê Te'ala xeber jê dayî û gotî jî.

Herdîsa em îman û baweriya bi wan hedîs û mu'cizaya jî tînîn û bawer dikeyn; ewêt ku Xudê Te'ala bo mirovan li ser dest û ezmanêt wan pêxemberêt xwe aşkira kirîn.

Ewelê wan pêxemberan Adem e (selam li ser bin) û axirê wan hemyan jî Muhemmed e -selat û selam li ser bin-.

Heke êk îman û baweriyê bi êkî ji wan pêxemberan neînît ewêt ku Xudê Te'ala navêt wan di Qur'anê da beyan kirîn û gotîn bê şik ew kes dê kafir bît.

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلَقَدْ بَعَثْنَا فِي كُلِّ أُمَّةٍ رَّسُولًا أَنِ اعْبُدُوا اللَّهَ وَاجْتَنِبُوا الطَّاغُوتَ

"Bi sûnd, Me bo her milet û qewmekî pêxemberek yê hinartî da ku ew emrî li wan biket û bêjîte wa: "Hûn hema her 'îbadetî û ta'etî bo Ellahu Te'ala bitinê biken û xwe dûr ragirin ji taxûta (anku ji muşrîk û kafirêt zalim û zordar)."[528]

Xudê Te'ala dibêjît:

رُّسُلاً مُّبَشِّرِينَ وَمُنذِرِينَ لِئَلاَّ يَكُونَ لِلنَّاسِ عَلَى اللّهِ حُجَّةٌ بَعْدَ الرُّسُلِ وَكَانَ اللّهُ عَزِيزاً حَكِيماً

"Ew pêxemberêt Me, hinartîn wan mizgîniya (Biheştê dida çak û başa) û yêt xirabkar jî ditirsandin û hişyar dikirin; ev e da ku piştî hatina pêxemberan bo mirovan li

528 Sûreta Nehl 36

hemberî Ellahu Te‘ala çu hêcet nemînin. Ellahu Te‘ala yî xurt û jêhatî ye û yî xudan hîkmet e (di hemî kar û kirin û gotinêt xwe da)."[529]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا كُنَّا مُعَذِّبِينَ حَتَّى نَبْعَثَ رَسُولا

"Qet Em çu qewm û mileta ‘ezab nadeyn heta ku Em, pêxemberekî bo wan birênekeyn û nehinêrîn."[530]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِنْ مِنْ أُمَّةٍ إِلَّا خَلا فِيهَا نَذِيرٌ

"Nê îleh bo her miletekî Me pêxemberek yê hinartî û yê birêkirye nav wan."[531]

Hejmara Pêxemberan jibilî Xudayê Jorî, qet kesek bi timamî û durustî nuzanît ka çende.

Di derheqa vê hindê da Xudayê Jorî kerem diket û dibêjît:

وَلَقَدْ أَرْسَلْنَا رُسُلًا مِنْ قَبْلِكَ مِنْهُمْ مَنْ قَصَصْنَا عَلَيْكَ وَمِنْهُمْ مَنْ لَمْ نَقْصُصْ عَلَيْكَ

"(Ey Muhemmmed!) Bi sûnd, Me berî te jî gelek pêxember yêt hinartîn, serhatiya hindeka ji wan Me bo te ya gotî û ya hindeka ji wan jî, Me bo te negotî ye."[532]

Xudê Te‘ala navê van bîst û pênç (25) Pêxemberan, di Qur'ana Pîroz da yê gotî:

---

529 Sûreta Nîsa 165
530 Sûreta Îsra 15
531 Sûreta Fatir 24
532 Sûreta Xafir 78

Adem, Îdrîs, Nuh, Hûd, Salih, Îbrahîm, Lût, Îshaq, Ye'qûb, Îsma'îl, Yusuf, Eyyûb, Musa, Şu'eyb, Harun, Dawut, Sûleyman, Zûlkîfl, Îlyas, El-Yes'' Yunus, Zekeriya, Yahya, Îsa û Muhammed, serwerê wan hemyan Muhammed e-Selewat û silavêt Xudê li ser wan hemyan bin-. Qet çu hedîsêt sehîh di derheqa hejmara Pêxemberan da nînin û nehatîne. Pêxemberê jirêve; anku resulê 'ewlî Nuh Pêxembere -silavêt Xudayê Jorî li ser bin-. Û Pêxemberê dûmahîkê jî Muhammed e -selat û selam li ser bin-.

Erk û wezîfê hemî Pêxemberan eve ye; gazîkirna xelk û 'alemê bû, bi bal Tewhîdê ve û paşvebirin û tirsandina xelk û 'alemê bû ji şîrk û kafiryê.

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلَقَدْ فَضَّلْنَا بَعْضَ النَّبِيِّينَ

"Bê şik Me, qedrê hinde pêxemberan ji yê hindeka pitir yê girtî û yêt xudan qedir kirîn."[533]

Xudê Te'ala dibêjît:

فَاصْبِرْ كما صَبَرَ أُوْلُوا الْعَزْمِ مِنَ الرُّسُلِ

"(Ey Muhemmed! Tu jî ji ulul -'ezma yî). Vêca tu jî her wekî pêxemberêt ulul-'ezm; ewêt ku her xwe bi sebir û hedar ragirtî, vêca tu jî xwe li hemberî hemî bela û musîbeta bi sebir û hedar qayim ragire (her wekî Nûhî, Îbrahîmî, Mûsayî û 'Îsayî silavêt Ellahu Te'ala li ser wan bin)."[534]

Pêxemberêt mezin (Ulul'ezim); eve ne: Nuh, Îbrahîm, Musa, 'Îsa û Muhammed (selewat û selamêt Xudayê Jorî li ser wan hemyan bin).

533 Sûreta Îsra 55
534 Sûreta Ehqaf 35

Muhemmed Pêxember jî -selat û selam li ser bin-, Pêxemberê axirê zemanî ye, Xudayê jorî ev Qur'ana kerîm bo wî ya hinartî û ew bo hemî mirovan û hemî qewm û mileta, xelk û 'alemê yê kiriye Pêxember bêferq û cudahî, qet piştî wî heta qiyamet radibît jî hêdî qet çu Pêxemberêt dî naên û na rabin.

Ellahu Te'ala emr diket û dibêjîte Pêxemberê xwe:

وَمَا اَرْسَلْنَاكَ اِلاَّ كَافَّةً لِلنَّاسِ بَشِيرًا وَنَذِيرًا وَلَكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ لاَ يَعْلَمُونَ

"(Ey Muhemmed!) Hema ji ber wê hindê Me tu yê hinartî (û yê kirye Pêxember) bo hemî xelk û 'alema; da ku tu mizgîniya (Biheştê) bideye başa û (muşrîk, kafir, bîd'etçiya û xirabkaran jî) bitirsînî û wan ji xewa xefletê hişyar bikey, belê bahra pitir ji mirovan vê hindê nuzanin!"[535]

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنَّا أَرْسَلْنَاكَ بِالْحَقِّ بَشِيرًا وَنَذِيرًا

"(Ey Muhemmed!) Bê şik Me, tu bo rohn kirin û aşkirakirna rêka heq yê hinartî (û yê kirye Pêxember), û da tu mizgîniya Biheştê bideye qencan û xiraba jî bi tirsînî û hişyar bikey."[536]

Xudê Te'ala dibêjît:

قُلْ يَا أَيُّهَا النَّاسُ إِنِّي رَسُولُ اللَّهِ إِلَيْكُمْ جَمِيعًا

535 Sûreta Sebe' 28
536 Sûreta Fatir 24

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje: "Ey gelî mirovan! Bê şik ez Pêxemberê Ellahu Te'ala me, Wî ez bo hewe hemyan yê birêkirîm û hinartîm."[537]

Herdîsa li ser vê hindê Ellahu Te'ala di ayeteka dî jî da dibêjît:

وَمَا اَرْسَلْنَاكَ اِلاَّ رَحْمَةً لِلْعَالَمِينَ

"(Ey Muhemmed!) Me, tu yê kirye Pêxember, û bo hemî xelk û 'alema yê hinartî da ku tu bo wan hemyan bi rehm û merhemet bî ji hemî la ve."[538]

Xudê Te'ala dibêjît:

مُّحَمَّدٌ رَّسُولُ اللَّهِ ۚ وَالَّذِينَ مَعَهُ أَشِدَّاءُ عَلَى الْكُفَّارِ رُحَمَاءُ بَيْنَهُمْ

"Muhemmed, pêxember û qasidê Ellahu Te'ala ye. Ewêt ku li gel wî, li hemberî kafiran gelek di tûnd û dijwar in û di navbeyna xwe da û li gel êkûdu gelek birehm û merhemet in."[539]

Xudê Te'ala dibêjît:

كَذٰلِكَ يُوحِي إِلَيْكَ وَإِلَى الَّذِينَ مِنْ قَبْلِكَ اللَّهُ الْعَزِيزُ الْحَكِيمُ

"Ey Muhemmed!) Her Ellahu Te'ala ye, yê ku Qur'anê bi rêka wehyê bo te dihinêrît, nê eha her wesa Wî bo wan pêxemberêt berî te jî wehî ya hinartî, her Ew yî xurt û jêhatî ye û yî xudan hîkmet e (di hemî kar û kirin û gotinêt xwe da)."[540]

---

537 Sûreta E'raf 158
538 Sûreta Enbiya 107
539 Sûreta Feth 29
540 Sûreta Şura 3

Xudê Te‘ala dibêjît:

ومَا مُحَمَّدٌ إِلَّا رَسُولٌ قَدْ خَلَتْ مِنْ قَبْلِهِ الرُّسُلُ

“Muhemmed -selat û selam li ser bin-hema Ew jî Pêxembereke ji wan pêxemberan ewêt ku Ellahu Te‘ala hinartîn. Bê şik berî wî jî gelek pêxember yêt hatîn û çûyîn.”[541]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَقَدْ جَاءَكُمْ رَسُولٌ مِّنْ أَنفُسِكُمْ عَزِيزٌ عَلَيْهِ مَا عَنِتُّمْ حَرِيصٌ عَلَيْكُم بِالْمُؤْمِنِينَ رَؤُوفٌ رَّحِيمٌ

“Bi sûnd, hema her ji hewe bi xwe pêxemberek bo hewe yê hatî, qet wî nevêt hûn çu zehmet û îza bikêşin û bibînin û ew bo hewe gelekî xêrxwaz û micide (ku hûn her li ser rêka heq û rast diberdewam bin ji hemî lave), bi rast î ew gelek hej îmandaran diket û bo wan gelekî birehm û merhemet e.”[542]

Xudê Te‘ala dibêjît:

مُّحَمَّدٌ رَّسُولُ اللَّهِ ۚ

“ Muhemmed, pêxember û qasidê Ellahu Te‘ala ye.”[543]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا النَّبِيُّ إِنَّا أَرْسَلْنَاكَ شَاهِدًا وَمُبَشِّرًا وَنَذِيرًا وَدَاعِيًا إِلَى اللَّهِ بِإِذْنِهِ وَسِرَاجًا مُّنِيرًا

541 Sûreta Alî ‘Îmran 144
542 Sûreta Tewbe 128
543 Sûretas Feth 29

“Ey Pêxember! Bê şik Me tu bo şehdekiyê yê hinartî anku da tu mizgîniya (Biheştê bideye îmandaran û xirabkaran jî) bitirsînî û hişyar bikey. Me, tu yê hinartî da ku tu bi destûra Ellahu Te‘ala gazî xelk û ‘alemê bikey; da ku ew bêne ser rêka dînê Ellahu Te‘ala û da tu bo hemyan bibye gazîkerekî geş û rewneqdar.”[544]

Xudê Te‘ala dibêjît:

مَّا كَانَ مُحَمَّدٌ أَبَا أَحَدٍ مِّن رِّجَالِكُمْ وَلَكِن رَّسُولَ اللَّهِ وَخَاتَمَ النَّبِيِّينَ وَكَانَ اللَّهُ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلِيمًا

“Qet Muhemmed, babê çu zelamêt hewe nîne, belê hema ew Resûlê Ellahu Te‘ala ye. Qet piştî wî çu pêxemberêt dî naên û narabin. Bi rast î Xudê Tala hemî tiştan bi timamî dizanît.”[545]

544 Sûreta Ehzab 45-46
545 Sûreta Ehzab 40



(عليه الصلاة والسلام)

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِنَّكَ لَعَلَىٰ خُلُقٍ عَظِيمٍ

"(Ey Muhemmed!) Bê şik tu, gelekî bi toreyî û xudanê exlaqekî gelekî mezinî."[546]

Carekê Pirsyara exlaqê Pêxemberê Xudê Te‘ala -selat û selam li ser bin- ji deyka me ‘Aîşayê (Xudê jê razî bît) hate kirin; ka exlaqê wî yî çewa bû, wê got exlaqê Pêxemberê Xudê Te‘ala -selat û selam li ser bin- Qur'an bû.[547]

Pêxemberê Xudê Te‘ala -selat û selam li ser bin- hema Qur'aneka bi ruh bû; anku wî di jîn û jiyara xwe da heta wefat kirî di hemî kar û barêt xwe da guhê xwe dida Qur'anê; wî ji hemî la ve Qur'an li ser ruha xwe tetbîq dikir û her pê ‘emel dikir, lewma deyka me ‘Aîşayê (Xudê jê razî bît) hema bi kurtî yê gotî: Exlaqê Pêxemberê Xudê Te‘ala -selat û selam li ser bin- Qur'an bû).

Pêxemberê me Muhemmed -selat û selam li ser bin- kurê ‘Ebdullahê kurê ‘Ebdul Mutelibê kurê Haşimî ye, Haşimî Qureyşîne, Qureyşî ji Kenaniya ne, Kenanî ji ‘Erebane, ‘Ereb ji zuriyeta Îsma‘îlê kurê Îbrahîmî

546 Sûreta Qelem 4
547 Musneda îmam Ehmedê kurê Henbel

ne, Îsma'îl ji nesla Îbrahîmiye, Îbrahîm ji zuriyeta Nuh Pêxemberiye (selam li ser bin). Navê deyka wî Amîna kiça Wehebî ye, qasidê Xudê Te'ala ye, xatemul-enbiya ye, xeyrulmurselî ne.

Divêt, gotin û ferman, şîret û nesîhetêt Pêxemberê me; her dem û gavê li bîra me bin û em pê 'emel bikeyn; da ku em di dinya û axretê da pê ruspî û serferaz bîn û da ku rast bît ku em ummeta wî ne.

Pêxemberê me, bînahiya çavêt me di sala 571 êkî mîladî da li Mekkeha Pîroz yê hatiye dinya yê û di 40 saliya xwe da yê biye Pêxember û di sala 632wê da li Medîna Munewwer yê wefat kirî, 'emrê wî 63 sal bû, wî 53 sal ji 'emrê xwe li Mekkehê û 10 sal jî li Medînê yêt borandîn.

Di mudehê 23 sala da Qur'ana Pîroz ji dev Xudê Te'ala û bi wasîtey Cibraîlî (silav li ser bin) ya bo nazil bî û hatî. Û wî 13 sala li Mekkeha pîroz û 10 sala jî li Medîna Munewwere wezîfê xwe ye'nî Pêxemberînî û qasidiya Xudê Te'ala û rêberiya ummetê bi durustî û bêkêmasî ya kirî û pêk înandî. Pêxemberê me, heft bûçûk hebin navêt wan eve ne:

1-Zeyneb. 2-Ruqiyya. 3-Ummu Gulsûm. 4-Fatima.

5- Qasim. 6-'Abdullah. 7-Îbrahîm (Xudê Te'ala ji wan hemyan razî bît)

5- Ruknê pêncê, îman û baweriya bi roja qiyametê ye.

Îman û baweriya bi rabîn û hatina roja qiyametê eve ye; ku divêt, mirov bê şik û şuphe ji dil îman û baweriyê, bi wan tiştan; wan hal û ehwalêt xeybî hemyan bînît; ewêt ku Xudê Te'ala û pêxemberê Wî -selat û selam li serbin- bo me gotîn û aşkira kirîn, di derheqî rabîna qiyametê da.

Hemî xudan ruh û mexluqat dê mirin, carekadî ew hemî bi emrê Xudê Te‘ala dê rabin û saxbine ve, ew hemî dê li meyda heşrê êne komkirin, ewêt kar û ‘emelêt qenc û baş kirîn, ew dê çine bihştê û yêt bê-emriya Xudê Te‘ala kirî û jê tobe nekirî ew dê çine Cehnemê.

Belê ehlê îmanê yêt gunehkar heke ew biçne Cehnemê jî, ew dê bi ‘edaleta Xudê Te‘ala jê derkevin û ew jî dê çine bihştê, belê yêt muşrîk û kafir; ewêt ku ji şîrk û kafiriya xwe tobe nekirîn û li ser hindê û bi wî halî mirîn, ew dê ebedî mînine di vav agirê Cehnemê da.

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ لا يُؤْمِنُونَ بِالآخِرَةِ زَيَّنَّا لَهُمْ أَعْمَالَهُمْ فَهُمْ يَعْمَهُونَ

“Bê şik ewêt îman û baweryê naînin bi axretê, Me kar û ‘emelêt wan li ber wan û bo wan yêt xemilandîn û ew yê di nav wan ‘emelêt xwe yêt xirab da vedgevizin.”[548]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلِ اللهُ يُحْيِيكُمْ ثُمَّ يُمِيتُكُمْ ثُمَّ يَجْمَعُكُمْ إِلَى يَوْمِ الْقِيَامَةِ لَا رَيْبَ فِيهِ
وَلَكِنَّ أَكْثَرَ النَّاسِ لَا يَعْلَمُونَ

“(Ey Muhemmed!) Tu, bêje wa: “Hema her Ellahu Te‘ala ye, Ew ê ku dê hewe saxkete ve, paşê Ew dê hewe mirînît û paşê Ew dê hewe hemyan pêk ve bo wê roja qiyametê komket; ewa ku hatina wê ya bê şik û guman. Belê, bahra pitir ji mirovan vê hindê nuzanin.”[549]

Zanîna rabîna qiyametê, hema her Xudayê Jorî bitinê dizanît ka kengê dê rabît, qet‘iyen ji Xudayê Jorî pêvetir kesekî dî nuzanît ku ka kengê dê êt û rabît.

548 Sûreta Neml 4
549 Sûreta Casiye 26

Çunku Xudayê Jorî hosa ferman diket û dibêjît:

قُلْ إِنَّمَا عِلْمُهَا عِندَ رَبِّي

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: “Bê şik zanîna rabîn û hatina qiyametê hema her ya li nik Ellahu Te‘ala bitinê (anku hema her Ew bitinê dizanît ka kengê qiyamet dê rabît, qet kesekî dî nuzanît).”[550]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَسْأَلُكَ النَّاسُ عَنِ السَّاعَةِ قُلْ إِنَّمَا عِلْمُهَا عِندَ اللَّهِ

“(Ey Muhemmed!) Mirov yê pisyara demê hatin û rabîna qiyametê ji te diken, tu bêje wa: “Zanîna wê hema her ya li nik Ellahu Te‘ala bitinê.”[551]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ اللَّهَ عِنْدَهُ عِلْمُ السَّاعَةِ

“Bê şik hema her Ellahu Te‘ala bitinê dizanît ka kengê qiyamet dê rabît û êt.”[552]

Xudê Te‘ala dibêjît:

مَثَلُ الْجَنَّةِ الَّتِي وُعِدَ الْمُتَّقُونَ تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الْأَنْهَارُ أُكُلُهَا دَائِمٌ
وَظِلُّهَا تِلْكَ عُقْبَى الَّذِينَ اتَّقَوْا وَعُقْبَى الْكَافِرِينَ النَّارُ

“Eha ew Biheşta rengîn ya hoye; ewa ku we‘de bo mutteqî û dîndaran pê hatiye dan ewan; di bin qesrêt wê ra rûbar diherikin, û xwarin û te‘amêt wê û sîha wê diberdewam in. Eha hema her eve ye, cih û wargehê wan;

550 Sûreta E‘raf 187
551 Sûreta Ehzab 63
552 Sûreta Luqman 34

ewêt ku xwe diparêzin ji bê-emriya Ellahu Te‘ala, û cih û wargehê kafiran jî hema her agir e."[553]

Fer û lazim e ku em baş bi zanîn li axretê Bihеşt wargehê lezzet û xweşiyane û qedirgirtinê ye bo îmandaran.

Li dûv gotina hedîsêt rast û durust Biheştê heşt (8) dergeh yêt heyn. Di Biheştê da; mirovêt mû'min û îmandar dê cemala rûyê Xudayê Jorî bînin.

Ew şol û karêt Xudayê Jorî mirovî pê dibete Biheştê eve ne: Tewhîde, Taqwatî ye, Exlaqê qenc û baş e.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَأَمَّا مَنْ خَافَ مَقَامَ رَبِّهِ وَنَهَى النَّفْسَ عَنِ الْهَوَى فَإِنَّ الْجَنَّةَ هِيَ الْمَأْوَى

"Belê heçî kesê bitirsît; ku ka çewa wê rojê (anku li roja qiyametê) dê li huzûra Rebbê xwe rawestît û berê nefsa xwe ji hewa û hewesê wî daye paş, bê şik cihê vehewhana wan Biheşt e."[554]

Cehnem jî cih û wargehê ezabê ye, bo muşrîk, kafir, bîd‘etçî û gunehkaraye ewêt ku heke jê tobe neken, Qur'an dibêjît: Cehnemê heft (7) dergeh yêt heyn.

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَهَا سَبْعَةُ أَبْوَابٍ لِّكُلِّ بَابٍ مِّنْهُمْ جُزْءٌ مَّقْسُومٌ

"Cehnemê heft dergeh yêt heyîn, bo her dergehekî bahr û pişkeka diyarkirî ji mirovan ya hey."[555]

553 Sûreta Re‘d 35
554 Sûreta Nazî‘at 41
555 Sûreta Hicr 44

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَأَمَّا مَنْ طَغَى وَآثَرَ الْحَيَاةَ الدُّنْيَا فَإِنَّ الْجَحِيمَ هِيَ الْمَأْوَى

“Vêca heçî kesê zilm û zordarî kirî û diket û ji hedê xwe derketî, bo xwe jîn û jiyara dinyayê hilbijartî û pişta xwe daye axretê, bê şik cih û warê wî Cehnem e.”[556]

Gotina hemî ‘Alim û zanayêt ehlê sunnetê êk e; anku ew hemî dibêjin: Biheşt û Cehnem vê gavê di mewcu din; Biheşt ya li ‘esmanê heftê û Cehnem jî ya dibin kûratiya ‘erdî da.

Xudê Te‘ala dibêjît:

اللَّهُ لَا إِلَهَ إِلَّا هُوَ لَيَجْمَعَنَّكُمْ إِلَى يَوْمِ الْقِيَامَةِ لَا رَيْبَ فِيهِ وَمَنْ أَصْدَقُ مِنَ اللَّهِ حَدِيثًا

“Ellahu Te‘ala, Îlahekî bitinê ye, ji wî pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin. Ew dê hewe hemyan pêk ve li roja qiyametê komket; ewa ku hatina wê ya bê şik û gumane. Erê, ma gotina kê ji gotina Ellahu Te‘ala ya rast tir û durust tir e gelo?”[557]

Xudê Te‘ala dibêjît:

مَنْ كَانَ يَرْجُو لِقَاءَ اللَّهِ فَإِنَّ أَجَلَ اللَّهِ لَآتٍ وَهُوَ السَّمِيعُ الْعَلِيمُ

“Heçî kesê bi ser ferazî daxwaz û hîviya gehiştina huzûra Ellahu Te‘ala biket, bê şik ew qewlê Ellahu Te‘ala bo hindê danadî her dê bi cih êt. Ellahu Te‘ala haj hemî deng û pêjiniya heye û Ew hemî tiştan bi timamî dizanît.”[558]

556 Sûreta Nazî‘at 37
557 Sûreta Nîsa 87
558 Sûreta ‘Enkebût 5

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَمَنْ يَعْمَلْ مِثْقَالَ ذَرَّةٍ خَيْرًا يَرَهُ وَمَنْ يَعْمَلْ مِثْقَالَ ذَرَّةٍ شَرًّا يَرَهُ

“Vêca heçyê, xwe temetî misqale zerreyekê qencî û çakiyê biket ew dê xelat û bedela wê qencî û çakiyê bînît û heçî kesê temetî misqale zerreyekê xirabiyê jî biket ew jî dê bedela wê bînît û dê pê ête ceza dan.”[559]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا بُنَيَّ إِنَّهَا إِن تَكُ مِثْقَالَ حَبَّةٍ مِّنْ خَرْدَلٍ فَتَكُن فِي صَخْرَةٍ أَوْ فِي السَّمَاوَاتِ أَوْ فِي الْأَرْضِ يَأْتِ بِهَا اللَّهُ إِنَّ اللَّهَ لَطِيفٌ خَبِيرٌ

“Luqmanî got: “Ey kurê min! (Heçî başî û xirabiya tu bikey) xwe heke ew temetî dindikeka xerdelê jî bît di nav çiyaberekî da bît yan di nav ‘esmanan da, yan jî di nav kûratiya ‘erdî da bît, îleh Ellahu Te‘ala dê wê înîte meydanê. Bê şik Ellahu Te‘ala, hemî sir û nepeniya bi timamî dizanît û Ew yî agehdar e bi hemî tiştan.”[560]

6- Ruknê şeşê; îman û baweriya bi qederê ye, îman û baweriya bi qederê eve ye; mirov bê şik û şuphe bawer biket, ku hindî tiştêt qewimtîn û yêt ku dê ji nûka jî qewimin; çî xêr yan şer, başî û xirabî ew hemî bi teqdîr û qedera Xudê Te‘ala ne; xwe mûyek û belgeka darê bêyî emr û fermana Xudê Te‘ala nawerhin û nakevin, hemî kar û kirnêt Xudê Te‘ala bi îradet û meşyeta Wî di navbeya Rehmet û Hikmeteka gelek mezin da peyda dibin.

Herdîsa divêt, mirov bizanît û fehim biket; Xudê Te‘ala hindî tiştêt ku dê heta roja qiyametê qewimin û peyda bin, Wî ew tişt hemî ji ezel da li qayde û qedereka aşkira yêt

559 Sûreta Zelzele 7
560 Sûreta Luqman 16

teqdîr kirîn di Lewhê mehfuz da û Ew wan tiştan hemyan bi timamî jî dizanît, qet çu tişt li ber Wî diberze nînin û berze nabin jî, ew tişt hemî wekî hezkirin û meşyeta Wî dê qewimin û peyda bin, qet di vê dinyayê da bêyî Xudê Te'ala çu tişt na qewimît û peyda nabît.

Cabirê kurê 'Ebdullahî (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin – yê gotî: Çû 'ebd îmanê naînin; nabine xudan îman û bawerî; heta ku ew îman û baweriyê neînin bi qedera xêr û şera; ku ew hemî ji teref Xudê Te'ala ne, û heta ku ew nezanin û fehim neken; ku ew tiştê gehiştiye wan û bi serê wî hatî, ew ew tişte Ew ê ku da her gehîte wan û da ête serê wan, û ew tiştê ne gehiştiye wan û ne hatiye serê wan, ew ew tişte Ew ê ku qet nagehîte wan û serê wan.[561]

Vêca yê îman û baweriyeka ji dil û qaîm bi qederê hebît, di dinyayê da dilê wî dê yî tena û rihed bît.

Qet kesek nuzanît, ka di jîn û jiyara wî da çî dê ête serê wî û ka Xudê Te'ala çî bo wî di axretê da jî hazir û teqdîr kiriye û çûnku ev hinde xeyb e; belê mirov piştî peydabîn û çêbînê dizanît.

Qeder sireka 'ecêbe di navbeyna Xudê Te'ala û 'ebdêt Wî da, qet çu milyaketêt mûqereb, Pêxember, welî û kesek çu ji qederê nuzanin. Xudê Te'ala bi Qederê wê dilreşî; xiyanet û xirabiya di dilê geleka ji mirovan da aşkira û pêşçav diket.

561 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya Sehîh e

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا تَشَاءُونَ إِلَّا أَن يَشَاءَ اللَّهُ رَبُّ الْعَالَمِينَ

“Belê, bêyî hezkirna Ellahu Te‘ala ku Ew Rebbê hemî ‘alema ye, qet hûn bi xwe neşên xwe bigehînine ser rêka heq û rast; anku hîdayetê.”[562]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّا كُلَّ شَيْءٍ خَلَقْنَاهُ بِقَدَرٍ

“Bê şik Me hemî tişt li qedare û bi pîvaneka timam yêt xuliqandîn û çêkirîn.”[563]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَخَلَقَ كُلَّ شَيْءٍ فَقَدَّرَهُ تَقْدِيرًا

“Xudê Te‘ala hemî tişt bi pîvan û mîqdareka aşkira yêt xuliqandîn û çêkirîn (û Me bêqusûrî bo hewe yêt hazir û amade kirîn).”[564]

Xudê Te‘ala dibêjît:

سُنَّةَ اللَّهِ فِي الَّذِينَ خَلَوْا مِن قَبْلُ وَكَانَ أَمْرُ اللَّهِ قَدَرًا مَّقْدُورًا

“Eha kar û ‘edetê Ellahu Te‘ala li gel wan pêxemberan û ummetêt berê jî; ewêt ku hatîn û çûyîn her yî hosa bû. Emrê Ellahu Te‘ala yî vebirî û teqdîrkirye.”[565]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِن تُصِبۡهُمۡ حَسَنَةٞ يَقُولُواْ هَٰذِهِۦ مِنۡ عِندِ ٱللَّهِۖ وَإِن تُصِبۡهُمۡ سَيِّئَةٞ يَقُولُواْ

562 Sûreta Tekwîr 29
563 Sûreta Qemer 49
564 Sûreta Furqan 2
565 Sûreta Ehzab 38

هَٰذِهِۦ مِنْ عِندِكَۚ قُلْ كُلٌّ مِّنْ عِندِ ٱللَّهِۖ فَمَالِ هَٰٓؤُلَآءِ ٱلْقَوْمِ لَا يَكَادُونَ يَفْقَهُونَ حَدِيثًا مَّآ أَصَابَكَ مِنْ حَسَنَةٍ فَمِنَ ٱللَّهِۖ وَمَآ أَصَابَكَ مِن سَيِّئَةٍ فَمِن نَّفْسِكَۚ

"Heke başî û xweşiyek bigehîte wa, ew dibêjin: "Eve, ji layê Ellahu Te'ala ye. Belê, heke nebaşî û xirabiyek bête serê wa, ew dibêjin: "Eve, ji ber te hate serê me" (Ey Muhemmed!). Tu bêje wa: "Hemî ji layê Ellahu Te'ala ye." Vêca ma vî qewmî çi ye, bo çî hinde ew dikorefehm in û di çu gotina nagehin? (Ey mirov!) Heçî başî û xweşiya bigehîte te ew ji layê Ellahu Te'ala ye, belê heçî xirabî û nebaşiya bête serê te, ew hema ji te bi xwe ye.[566]

566 Sûreta Nîsa 78-79

# ÎHSAN; QENCÎ

Îhsan; qencî û teqwatî rutbe û dereceyeka gelek bilind û mezin e di dînê Îslamê da, heta Xudê Te‘ala di gelek ayeta da û Pêxemberê Wî jî di gelek hedîsa da wesyet û qewyatî bi Îhsanê; anku bi qencî û teqwatî ya li îmandaran kirî.

Berê xwe bidenê di van çend ayetêt jêrî da Xudê Te‘ala ku çewa behsê mirovêt muhsin û xêrxwaz û qencîker diket:

Xudê Te‘ala dibêjît:

بَلَىٰ مَنْ أَسْلَمَ وَجْهَهُ لِلَّهِ وَهُوَ مُحْسِنٌ فَلَهُ أَجْرُهُ عِندَ رَبِّهِ وَلَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ

“Belê heçî kesê ji dilekî safî berê xwe bidete Ellahu Te‘ala (her bi xwe şikandin û ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Ellahu Te‘ala biket) û ew bi xwe jî li gel wê hindê yî qencî kerbît.”[567]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ الْمُحْسِنِينَ

“Bê şik Ellahu Te‘ala gelek hej mirovêt xêrxwaz û qencîkera diket.”[568]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ اللَّهَ مَعَ الَّذِينَ اتَّقَوا وَّالَّذِينَ هُم مُّحْسِنُونَ

567 Sûreta Beqere 112
568 Sûreta Beqere 195

“Bê şik Ellahu Te‘ala, bi harîkariya xwe her yê li gel wan mutteqî û dîndaran; ewêt ku dixêrxwaz û qencîker.”[569]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ اللَّهَ لَا يُضِيعُ أَجْرَ الْمُحْسِنِينَ

“Bê şik Ellahu Te‘ala bedela kar û ‘emelêt qencîkera qet çuyê jê berze û kêm naket.”[570]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَبَشِّرِ الْمُحْسِنِينَ

“(Ey Muhemmed!) Tu hema her mizgîniyê bi Biheştê bide mirovêt xêrxwaz û qencîker.”[571]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ رَحْمَتَ اللَّهِ قَرِيبٌ مِنَ الْمُحْسِنِينَ

“Bê şik rehim û merhemeta Ellahu Te‘ala geleka ya nêzîkî mirovêt qencîker û xêrxwaze.”[572]

Pêxember-selat û selam li ser bin- dibêjît: Mirovê Xudê Te‘ala ji hemî mirovan pitir hejê diket; ew e yê ku ji hemî mirovan pitir menfî‘etî wî di gehîte mirovan; anku ew e yê ku gelek xêr xwaz û qencîker.[573]

Her wekî em dizanîn derece û mertebêt dînê Îslamê sêne: Îslam, Îman û Îhsan nin, yê Busulman kêm kême ji dereca Busulmanetiyê bilind dibîte dereca îman û baweriyê û ji wê jî bilind dibîte dereca îhsanê anku dibîte

569 Sûreta Nehl 128
570 Sûreta Hûd 115
571 Sûreta Hec 37
572 Sûreta E‘raf 56
573 Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Ev hedîs e ya hesene

muxlisê Xudê Te‘ala û Busulmanekî rast û durust dilê wî tena dibît û pişta wî bi Xudê Te‘ala gerim û qaîm dibît, çûnku ew baş dizanît ku her Xudê Te‘ala piştevanê wî ye, bi şev û roj Xudê Te‘ala çavdêr û zêrevane li ser wî, ew her yî rast û durust e di hemî kar û barêt xwe da.

Divêt, yê Busulman gelek li gotin û kirnêt xwe yî hişyar bît; ew her gav berî gotin û kirina hemî kar û ‘emelêt xwe baş hizrêt xwe biket; anku ew hemî gotin û kirnêt xwe bikêşît û bipîvît; ka çewa ew gotin û kirin dê di cuwantir û bi mefatir bin, ew wesa bêjît û biket; da ku gotinêt wî dişirîn û dil veker bin û şol û karêt wî jî dipaqij û binecih bin, ev e da ku ew bi kirna çakî, qenciyî û başiyêt xwe bigehîte vê dereca îhsanê; eva ku hinde ya bilind û berketî di dînê Îslamê da; anku li nik Xudê Te‘ala.

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ اللَّهَ يَأْمُرُ بِالْعَدْلِ وَالإِحْسَانِ وَإِيتَاءِ ذِي الْقُرْبَى وَيَنْهَى عَنْ الْفَحْشَاءِ وَالْمُنكَرِ وَالْبَغْيِ يَعِظُكُمْ لَعَلَّكُمْ تَذَكَّرُونَ

“Bê şik Ellahu Te‘ala, bi cih înandina ‘edaletê û bi kirna çakiyê û harîkariya lêzim û kes û kara emrî li hewe diket û nehya hewe diket ji kirna qibhet û bê fêhliya û zilm û Te‘dayî. Ellahu Te‘ala, bi vê hindê şîreta li hewe diket da ku hûn her bîne bîra xwe û pê ‘emel biken.”[574]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَأَنفِقُواْ فِي سَبِيلِ اللّهِ وَلاَ تُلْقُواْ بِأَيْدِيكُمْ إِلَى التَّهْلُكَةِ وَأَحْسِنُوَاْ إِنَّ اللّهَ يُحِبُّ الْمُحْسِنِينَ

“(Ey gelî îmandaran!) Hûn her malê xwe di rêka Ellahu Te‘ala da (di kar û barêt cîhadê da û bo belav kirna

574 Sûreta Nehl 90

dînê Wî) xerc biken, hişyar bin hûn xwe bi destêt xwe ne avêne tehlîkê û hûn şol û karêt baş biken. Bê şik Ellahu Te'ala gelek hej mirovêt xêrxwaz û qencîker diket."[575]

Xudê Te'ala dibêjît:

لِّلَّذِينَ أَحْسَنُواْ الْحُسْنَى وَزِيَادَةٌ وَلاَ يَرْهَقُ وُجُوهَهُمْ قَتَرٌ وَلاَ ذِلَّةٌ أُوْلَئِكَ أَصْحَابُ الْجَنَّةِ هُمْ فِيهَا خَالِدُونَ

"Bo wan îmandaran, ewêt ku 'emelêt çak û baş kirîn û diken Biheşt ya hey û zêde barî wê jî, wê rojê qet çu toz û xubar nakevîte ser ser û çavêt wan û ew naşkên; ew her dê biqedr bin. Eha her ew in; ehlê Biheştê, ew heta hetayê dê bimîne di nav Biheştê da."[576]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَقُل لِّعِبَادِي يَقُولُواْ الَّتِي هِيَ أَحْسَنُ

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje 'ebdêt min: Demê ew taxivin bila ew hema her wan gotinêt ji hemyan baştir bêjin û pê baxivin li gel êkûdu."[577]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَوَصَّيْنَا الْإِنْسَانَ بِوَالِدَيْهِ حُسْنًا

"Me, qewyatî ya li mirovî (însanan) kirî ku ew her li gel deyik û babêt xwe diqenc bin û başiyê biken."[578]

Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser binyê gotî: (Xudê Te'ala gelek hej wî kesî diket; Ew ê ku li

575 Sûreta Beqerq 195
576 Sûreta Yunûs 26
577 Sûreta Îsra 53
578 Sûreta 'Enkebût 8

demê ‘emelekî; şol û karekî diket ew tam; baş û law û bêkêmasî biket).[579]

Ebû Ye‘la Şedadê kurê Ewsî (Xudê jê razî bît) dibêjît;

Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- yê gotî: Bê şik Xudê Te‘ala başî û qencî li ser her tiştekî ya ferz û pêtivî kirî. Vêca li demê hewe êk (anku qatilek) kuşt, hûn wî bi terzekî cuwan bikujin.

Li demê hewe tiştek (heywanek) serjêkir hûn cuwan û bi rehim serjêbiken, li demê êkî ji hewe viya tiştekî serjêbiket, bila ew kêra xwe baş xweş biket û ew berî serjêkirnê muhletê bidete wî heywanê; yê ku ew dê serjêket.[580]

Di nav hedîsa Cîbraîlî da (selam li ser bin) ewa meşhûr, ya ku ji ‘Umerê kurê Xetabî (Xudê jê razî bît) hatiye rîwayet kirin, hosa behsê îhsanê yê hatî: (Îhsan; eve ye; ku tu we ‘îbadetî bo Xudê Te‘ala bikey; her wekî ku tu Wî dibînî, nê heke tu Wî nebînî baş bizane û bawerbike Ew te dibînît).[581]

Di rîwayeteka dî da, îmamê Muslim (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Tu we ji Xudê Te‘ala bitirse her wekî ku tu Wî dibînî, nê heke tu Wî nebînî, baş bizane û bawerbike Ew her dem û gavê te dibînît).

Herdîsa di rîwayeteka dî jî da ya hatî, Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Îhsan; ew e; ku tu we ‘emel, şol û kara bo Xudê Te‘ala bikey her wekî ku tu Wî dibînî, nê heke tu Wî nebînî baş bizane û bawerbike Ew te dibînît).[582]

579 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya sehîh e
580 Muslim
581 Muslim
582 Musne da îmamê Ehmedê kurê Henbelî reqemq hedîsê 2842

# NÛKİRNA ÎMAN Û BAWERİYÊ

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ الَّذِينَ إِذَا ذُكِرَ اللَّهُ وَجِلَتْ قُلُوبُهُمْ وَإِذَا تُلِيَتْ عَلَيْهِمْ آيَاتُهُ زَادَتْهُمْ إِيمَانًا وَعَلَى رَبِّهِمْ يَتَوَكَّلُون

"Bê şik îmandarêt rast û durust hema her ew in; ewêt ku li demê behsê Ellahu Te‘ala li def tête kirin dilêt wan ji tirs û sehma da direcifin û nexasma li demê ayetêt Qur'anê li def wan û bo wan têne xwandin îman û bawerya wan hêj zêde tir lê têt û ew her pişta xwe bi Rebbê xwe qayim û mukum diken."[583]

Xudê Te‘ala dibêjît:

هُوَ ٱلَّذِىٓ أَنزَلَ ٱلسَّكِينَةَ فِى قُلُوبِ ٱلْمُؤْمِنِينَ لِيَزْدَادُوٓا۟ إِيمَٰنًا مَّعَ إِيمَٰنِهِمْ ۗ

"Her Ellahu Te‘ala ye, yê ku aramî û êmnahî darêhtiye ser dilê îmandaran; da ku ew li gel îman û baweriya xwe hindî dî iman û baweriya xwe zêde tir lê biken…"[584]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَيَزْدَادَ الَّذِينَ آمَنُوا إِيمَانًا

"Û da ku ewêt îman û bawerî înandî, hindî dî îman û baweriya wan pê zêde tir lê bêt."[585]

583 Sûreta Enfal 2
584 Sûreta Fetih 4
585 Sûreta Muddessîr 31

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِذَا مَا أُنزِلَتْ سُورَةٌ فَمِنْهُم مَّن يَقُولُ أَيُّكُمْ زَادَتْهُ هَٰذِهِ إِيمَانًا ۚ فَأَمَّا الَّذِينَ آمَنُوا فَزَادَتْهُمْ إِيمَانًا وَهُمْ يَسْتَبْشِرُونَ

“Her demê ji Qur’ana kerîm sûretek hatiba xwarê, hindek ji wan minafiqa da bi yarî û tirane ve bêjne êkûdu: “Erê vê sûretê îmana kê ji hewe zêde tir kir ye? Belê, ewêt îman û bawerî înandî (vê sûretê) hindîdî îman û bawerî li wan zêde tir lê dikir û ew pê dilgeş û keyf xweş dibin.”[586]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَمُنُّونَ عَلَيْكَ أَنْ أَسْلَمُوا قُلْ لا تَمُنُّوا عَلَيَّ إِسْلامَكُمْ بَلِ اللَّهُ يَمُنُّ عَلَيْكُمْ أَنْ هَدَاكُمْ لِلإِيمَانِ إِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ

“(Ey Muhemmed!) Ew yê Busulman bîniya xwe li ser te dikene minet, tu bêje wa: “Hûn Busulman bîniya xwe nekene minet li ser min. Belê, Ellahu Te‘ala minet ya li hewe kirî; ku Wî hûn yêt rast e rê kirîn bo îman û baweriyê. Heke we ye ku hûn di rastgo ne.”[587]

Xudê Te‘ala dibêjît:

الَّذِينَ آمَنُوا وَتَطْمَئِنُّ قُلُوبُهُمْ بِذِكْرِ اللَّهِ أَلا بِذِكْرِ اللَّهِ تَطْمَئِنُّ الْقُلُوبُ

“Ewêt îman û bawerî înandî, dilêt wan her bi bîr înandina navê Ellahu Te‘ala tena û teser dibin. Hûn xwe baş hişyar biken (û baş bizanin) dil hema her bi bîr înandina navê Ellahu Te‘ala tena û teser dibin.”[588]

586 Sûreta Tewbe 124
587 Sûreta Hucurat 17
588 Sûreta Re‘d 28

Xudê Te‘ala dibêjît:

الَّذِينَ آمَنُواْ وَلَمْ يَلْبِسُواْ إِيمَانَهُم بِظُلْمٍ أُوْلَئِكَ لَهُمُ الأَمْنُ وَهُم مُّهْتَدُونَ

“Ewêt îman û bawerî înandî û çu şîrk têkilî nav îman û baweriya xwe nekirî, êmnahî û tenahî bo wa ye, eha hema her ew ew in; ewêt ku li ser rêka heq û rast.”[589]

Xudê Te‘ala dibêjît:

رَبَّنَا لاَ تُزِغْ قُلُوبَنَا بَعْدَ إِذْ هَدَيْتَنَا وَهَبْ لَنَا مِن لَّدُنكَ رَحْمَةً إِنَّكَ أَنتَ الْوَهَّابُ

“ Ey Rebbê me! Piştî ku Te em înandîne ser rêka heq û rast, Tu dilêt me xwahir neke. Tu ji layê xwe ve rehmekê bi me bibe. Bê şik hema her Tu yî xudanê dan û kerema (ey Xuda!).”[590]

Belê vî zemanî bela û musîbeta ji hemî rexan ve rex û doran yê li îmandaran girtîn, bê guman tesîra vê hindê bi dujwarî ya li ser dil û nefsa mirovan hey û diket, gelek cara jî ji ber lawazî û ze‘îfiya îman û baweriyê bêhna mirovan teng dibît. Busulmanê îmana wî ya lawaz û ze‘îf bît, ew di jîn û jiyara xwe da tam nakete şirînahiya îman û bawriya xwe, ew dê li her du dinya yî şepilî û aloz bît û qet ew xêrê ji xwe nabînît.

‘Ebasê kurê ‘Ebdulmuttelibî (Xudê jê razî bît) dibêjît, Pêxember-selat û selam li ser bin- yê gotî: Miheqaq ew kes dê tam kete şirînahiya îmanê; Ew ê ji dil yî razî bît ku Xudê Te‘ala Rebbê wî ye, Ew ê ji dil yî razî bît û qebûlbiket ku dînê Îslamê dînê wî ye, Ew ê ji dil yî razî bît ku Muhemmed -selat û selam li ser bin- Pêxemberê wî ye).[591]

589 Sûreta En‘am 82
590 Sûreta Alî ‘Îmran 8
591 Muslim

Hesenê Besrî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Hûn bo xwe di kirna van hersê tiştan da li tama şirînahiya îmanê bigerhin: (Di kirna nivêjê da, di kirna zikrîda û di xwandina Qur'anê da, heke hewe tam kirê; ev e hewe tamkirê, belê heke hewe tam nekirê; bizanin dergeh li ser hewe yî girtî ye!).[592]

Îmam Edhemê kurê Edhemî (Xudê jê razî bît)

dibêjît: (Wellahî em bi îman û baweriya xwe yê di nav lezzet û  xweşiyeka we da, nê heke melik û kurêt melika zanîba û pê heshabane ew da rabin bi şîrî wê lezzet û xweşiya em di nav da dijîn, da ji me stînin).[593]

Îman û bawerî li dev Busulmanî bi kirna 'îbdetî û ta'etî, bi başî û çakiyan, bi hevalîniya qenc û çakêt Xudê Te'ala zêde dibît û bi 'eksa wê hindê jî îman û bawerî li dev xudanê xwe bi xafiliya ji Xudê Te'ala û bi bê-emriya Wî û bi hevalîniya xafil û gunehkaran û bi dostîniya dujmin û neyarêt dînî Îslamê ze'îf û lawaz dibît.

Cundubê kurê 'Ebdullahî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Em li doranêt Pêxemberî-selat û selam li ser bin- hinde xort û gencêt bi quwet bîn, berî em xwe bi 'elimîne Qur'anê, wî Tewhîd; îman û bawerî nîşa me dida, paşê wî Qur'an nîşa me dida û me jî bi Qur'anê îman û baweriya xwe hêj zêde tir dikir).[594]

Luqmanê Hekîm jî (selam li ser bin) li demê wî şîret li kurkê xwe kirîn, jirêve wî gote kurkê xwe: Ey kurkê min tu gelekî hişyarbe, tu çu şirîka bo Ellahu Te'ala çêneke! Anku wî jirêve û ji berî hemî tiştan dersa Tewhîdê; 'eqîde û îmanê bo kurkê xwe ya gotî.

592 Medarik es-salikîn

593 Bidayet în Kesîr

594 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya sehîhe

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِذْ قَالَ لُقْمَانُ لِابْنِهِ وَهُوَ يَعِظُهُ يَا بُنَيَّ لَا تُشْرِكْ بِاللَّهِ إِنَّ الشِّرْكَ لَظُلْمٌ عَظِيمٌ

“(Ey Muhemmed!) Tu bîne bîra xwe li demê Luqmanî we‘z û şîret li kurkê xwe kirîn û gotiyê: “Ey kurkê min! Tu çu hevkûf û şirîka bo Ellahu Te‘ala çêneke! Bê şik hevkûf û şirîk çêkirin (bo Ellahu Te‘ala) zilmeka gelek mezin e.”[595]

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Hûn îman û baweriya xwe nû biken, hinde sihabiya gotê ya qasidê Xudê: Em çewa îman û baweriya xwe nû bikeyn? Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin-, got hûn gelek bêjin: (Laîlahe îllah).[596]

Belê divêt, nûkirna îman û baweriyê ne hema bi gotina devî bitinê bît, divêt, em îman û baweriya xwe bi xizmeta dînî bi kar û ‘emelêt baş her nûjen bikeyn, çunku em hemî muhtacî tamkirna lezzet û xweşiya îman û baweriya xwe ne.

‘Ebdullahî kurê Îmamê ‘Umer (Xudê ji wî û babê wî razî bît) dibêjît; Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Miheqeq îman û bawerî di nav hinavêt êkî ji hewe da kevin dibît; her wekî kevinbina cilkî, vêca hûn bo xwe daxwazê ji Xudê Te‘ala biken; da ku Ew bo hewe îman û baweriya hewe her di nav dil û cergêt hewe da nûy biket).[597]

595 Sûreta Luqman 13
596 Musneda Îmamê Ehmed
597 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya sehîhe

Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- dibêjît: Hûn bo xwe lezê likirna kar û ‘emelêt baş biken, hêj hinde fitnêt wekî şeva tarî bi ser hewe da nehatîn; hîngê zelam dê serê spêdê rabît yî Busulman û ew dê gehîte danê êvarê ku ew yî kafir bî, û ew dê li êvarê yî îmandar bît û dê serê spêdê rabît ku ew yê kafir bî, çunku ew dîn û îmanêt xwe bi mal û pertalêt dinyayê difiroşîn).[598]

Îmamê ‘Umerê kurê Xettabî (Xudê jê razî bît) her car wî di gote heval û hogirêt xwe (Xudê ji wan hemyan razî bît) dê rabin werin da em îman û baweriya xwe zêde bikeyn, û bi lefzekadî dî; wî digote wan dê werin da em îman û baweriya xwe zêde bikeyn).[599]

‘Ebdullahê kurê Mes‘ud (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Ey Xudayê me! Em hîvî û rîcayê ji Te dikeyn; ku Tu Îman û baweriya me, êqîn û zanîna me bi şirî‘etî bo me zêde tir bike).[600]

‘Ebdullahê kurê Rewaheyî (Xudê jê razî bît) dibêjît her car wî digote hevalêt xwe: Werin da em se‘etekê îmanê bînîn; ye‘nî werin da em behsê Xudê Te‘ala bikeyn û îmana xwe zêde tir bikeyîn; da ku Xudê Te‘ala bi ‘efû kirna gunehêt me, me bînîte bîra xwe).[601] ,

Carekê Mu‘azê kurê Cebelî (Xudê jê razî bît) gote zelamekî: Were rûne da ku em se‘etekê îmanê bînîn; ye‘nî behsê Xudê Te‘ala bikeyn).[602]

Hesenê Besrî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Îman û bawerî Ne ew e ku mirov serve serve xwe pê bi xemlînît yan jî hema xweziya lê rahêlît, belê îman û baweriya rast û durust

598 Muslim
599 Kitêba eş-Şrî‘e ya Acirî
600 Kitêba el-Îbane ya Îbn Bete
601 Kitêba el-Îman ya Îbn Ebî Şeybe
602 Buxarî

ew e; ya ku di dila da qaîm; xwe cih dibît û bi kar û ‘emela bête tesdîq kirin (anku divêt, kar û ‘emelêt mirovî yêt qenç û baş şahid bin li ser heyîna îman û baweriya mirovî).[603]

603 Kitêba îman, Îbin Teymiyê Herranî

# MİNAFİQÎ; DURYATÎ

Xudê Te'ala dibêjît:

ٱلۡمُنَٰفِقُونَ وَٱلۡمُنَٰفِقَٰتُ بَعۡضُهُم مِّنۢ بَعۡضٖۚ يَأۡمُرُونَ بِٱلۡمُنكَرِ وَيَنۡهَوۡنَ عَنِ ٱلۡمَعۡرُوفِ وَيَقۡبِضُونَ أَيۡدِيَهُمۡۚ نَسُواْ ٱللَّهَ فَنَسِيَهُمۡۚ إِنَّ ٱلۡمُنَٰفِقِينَ هُمُ ٱلۡفَٰسِقُونَ وَعَدَ ٱللَّهُ ٱلۡمُنَٰفِقِينَ وَٱلۡمُنَٰفِقَٰتِ وَٱلۡكُفَّارَ نَارَ جَهَنَّمَ خَٰلِدِينَ فِيهَاۚ هِيَ حَسۡبُهُمۡۚ وَلَعَنَهُمُ ٱللَّهُۖ وَلَهُمۡ عَذَابٞ مُّقِيمٞ.

"Zelamêt minafiq û jinkêt minafiq hemî piştekin û ji êkûdune. Ew emrî bi kirna xirabiya diken û rê li ber başiya digirin, û ew destêt xwe dimiçînin (anku diqels û çûrîkin). wan Ellahu Te'ala yê ji bîr kirî, vêca Ellahu Te'ala jî ew yê ji bîr kirîn, bê şik hema her minafiqin ewêt ku ji rêka heq derketîn û difasiq. Ellahu Te'ala soz û we'de ya daye zelamêt minafiq û jinkêt minafiq û kafiran bi agirê Cehnemê, ku ew hemî pêk ve heta hetayê dê bimîne tê da. Eha her ew der besî wa ye, Ellahu Te'ala le'net ya li wan kirî û bo wan 'ezabeka berdewam jî ya hey."[604]

Mirovêt minafiq û durûy, ew bi devê xwe Busulman in, belê ew di dilê xwe da kafir in.

Li demê Pêxemberî -selat û selam li ser bin –çû minafiq li Mekkehê di nav Busulmana da nebin, belê piştî ku pêxember mişextbî, ew bi heval û hogirêt xwe ve çûyne Medîna pîroz, jinûka li wêrê di nav Busulmana da mirovêt minafiq çêbin û peyda bin. Hetta Hûzeyfê kurê Yemanî (Xudê jê razî bît)emînê sirrêt Pêxemberî bû; anku Pêxemberî- selat û selam li ser bin- lîsta navêt hemî mûnafiqêt li Medîna pîroz teslîmî wî kirbû; wî navêt wan mûnafiqa heta wefatkirî jî bo kesekê negotibin.

604 Sûreta Tewbe 67-68

Ebubekrê sîddîq (Xudê jê razî bît) pê diheshît ku lîsta navêt mûnafiqa ya li dev wî, ew radibît diçîte dev Hûzeyfê kurê Yemanî û dibêjîtê: Ka berê xwe bidê, navê min di nav wê listêda heye an ne!

Eve nihe hizar û çarsed sale, em yê ji Pêxemberî dûrketîn, hema her Xudê Te'ala bitinê dizanît ka nihe çend ji me minafiqin û di durûn e.

Minafiq ew kese yê ku ser ve xwe Busulman pêşcav diket, belê ew di dilê xwe da kafiriya xwe vedşêrît; ser ve laîlahe îllahe û ji bin ve jî ne'uzû bîllahe.

Du qisim û new'êt mûnafiqiyê yêt heyn:

1- Mûnafiqiya î'tîqadî yan jî ya mezin; eve ye; ku êk îman û baweriyê bi devê xwe û kar û 'emelêt xwe aşkira biket, belê ew kafiriya xwe di dilê xwe da vedşêrît, ev e wekî wî kesî; yê ku gotina Xudê Te'ala û wî tiştî yê ku Pêxemberê Wî -selat û selam li ser bin –pê hatî di dilê xwe da direw hisab biket. Ev new'ê mûnafiqiyê mirovan ji nav dînî dixirînît û dertêxît. Heke xudanê vê mûnafiqiyê jê tobe neket û li ser wê nifaqa xwe bimrît, ew dê li ser kafiriyê mirît û çît.

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنَّ الْمُنَافِقِينَ فِي الدَّرْكِ الْأَسْفَلِ مِنَ النَّارِ وَلَنْ تَجِدَ لَهُمْ نَصِيرًا

"Bê şik minafiq yêt qata Cehnemê ya binî da, qet tu bo wan harîkarekî jî nabînî."[605]

Haşa yêt mûnafiq li bere ku ew Xudayê Jorî û îmandaran bixapînin, qet ew ne ji Busulmanane û ne jî ji kafiran ne, kerbêt wan ji îmandaran vedbin û ew her bi vedizkî ve harîkariya kafiran diken; li hemberî Busulmana.

605 Sûreta Nîsa 145

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَمَا لَكُمْ فِي الْمُنَافِقِينَ فِئَتَيْنِ وَاللَّهُ أَرْكَسَهُمْ بِمَا كَسَبُوا

“(Ey gelî îmandaran!) Ma hewe çi ye, bo çî hûn di derheqa minafiqa da dibine du bir û çûn!? Ellahu Te‘ala ji ber wê duryatiya wan kirî û diken, ew yêt ser şor kirîn (û zivirandîne ser kafiriya berê).”[606]

2- Mûnafiqiya ‘emelî yan jî ya bûçûk, ev new‘ê mûnafiqiya bûçûk xudanê xwe ji dînî der naêxît, belê heke xudanê vê mûnafiqiyê jê tobe neket û li ser wê nifaqa xwe bimrît, ew tehlîkeyeka mezin e bo îmana wî.

إِنَّ الْمُنَافِقِينَ يُخَادِعُونَ اللَّهَ وَهُوَ خَادِعُهُمْ وَإِذَا قَامُوا إِلَى الصَّلاةِ قَامُوا كُسَالَى يُرَاءُونَ النَّاسَ وَلا يَذْكُرُونَ اللَّهَ إِلا قَلِيلًا مُذَبْذَبِينَ بَيْنَ ذَٰلِكَ لاَ إِلَىٰ هَـٰؤُلآءِ وَلاَ إِلَى هَـٰؤُلآءِ وَمَن يُضْلِلِ ٱللَّهُ فَلَن تَجِدَ لَهُ سَبِيلاً

“Bê şik minafiqa li bere Ellahu Te‘ala bixapînin, belê Ellahu Te‘ala fend û fêhlêt wan her bi serê wan da dipelixînît. Demê ewêt minafiq radibin bo kirna nivêjê ew bi tengsistî û ne ji dil radibin; ew hema ji ber xelkê; bo riya û rûmetî nivêjan diken, û ew gelek kêm navê Ellahu Te‘ala tîne bîra xwe (ew hema car û bara nivêjan diken!) Ew minafiq ew in; ewêt ku mayne di navbeyna Busulmana û kafiran da; ew ne ji wan e û ne ji van ne Ellahu Te‘ala kê bixirînît û di ser rê da bibet, qet hêdî tu çu rêka bo wî nabînî (ku ew pê bigehîte ser rêka heq û rast; hîdayetê).”[607]

606 Sûreta Nîsa 88
607 Sûreta Nîsa 142

Pêxemberî-selat û selam li ser bin-yê gotî:

Çar fêhil û silaxet yêt heyn, ew li dev kê hebin ew mûnafiqekî tame; yê ku êk ji wan li dev hebît, ev e fêhil û silaxeteka mûnafiqiyê ya li dev wî hey, belê gava wî ew hêla, ev e ew ji mûnafiqiyê xilas bû, ew herçar fêhil û silaxetêt mûnafiqiyê eve ne: Yê xiyanetê di êmanetî da biket, yê demê taxivît direwa biket, yê demê soz û ‘ehd da êkî ew wê soz û ehda xwe bişkênît û yê li demê ew û êk bihevrikî diçin ew yî ezman reş bît, lewçe baxivît; gotina dûmahîkê berahîkê bêjît.”[608]

608 Buxarî

## EHLÛL-KÎTAB; CUHÎ Û FİLE

Xudê Te'ala dibêjît:

وَإِذْ قَالَ عِيسَى ابْنُ مَرْيَمَ يَا بَنِي إِسْرَائِيلَ إِنِّي رَسُولُ اللَّهِ إِلَيْكُم مُّصَدِّقًا لِّمَا بَيْنَ يَدَيَّ مِنَ التَّوْرَاةِ وَمُبَشِّرًا بِرَسُولٍ يَأْتِي مِن بَعْدِي اسْمُهُ أَحْمَدُ ۖ فَلَمَّا جَاءَهُم بِالْبَيِّنَاتِ قَالُوا هَٰذَا سِحْرٌ مُّبِينٌ

"(Ey Muhemmed!) Tu bîne bîra xwe demê 'Îsayê kurê Meryema pak û paqij gotî: "Ey gelî dûndeha Îsraîlî (anku zûriyet û kinêta Ye'qûb Pêxemberî!) Bê şik ez Pêxemberê Ellahu Te'ala me bo hewe yê hatîme hinartin, ez wê Tewratê ya ku berî min hatiye xwarê rast dertêxim (tesdîq dikem) û ez mizgîniyê jî bi pêxemberekî dideme hewe ku piştî min dê êt navê wî **Ehmed** e." Belê, piştî Muhemmed Pêxember -selat û selam li ser bin- bo wan bi delîlêt aşkira hatî, wan got: "Eva tu bo me pê hatî hema sêhirbaziyeka aşkira ye."[609]

Ehmedê Xanî (Xudê jê raqzî bit) dibêjît:

'Îsayî dema dixwend-i Încîl

Behsa wî dikir bi wehy û tenzîl

Go "Mujde didim Resûlê emced

Dê paşî min bê bi navê Ehmed[610]

Xudê Te'ala dibêjît:

الَّذِينَ آتَيْنَاهُمُ الْكِتَابَ يَعْرِفُونَهُ كَمَا يَعْرِفُونَ أَبْنَاءَهُمُ ۘ الَّذِينَ خَسِرُوا أَنفُسَهُمْ فَهُمْ لَا يُؤْمِنُونَ

---

609 Sûreta Seff 6

610 Kitêba Mem û zîn

“Ewêt Me, Tewrat û Încîl dayê, ew we Pêxemberî diniyasin her wekî ku ew kurêt xwe diniyasin. Ewêt ruha xwe xusaret kirî ew ew in; ewêt îman û baweriyê naînin bi Muhemmed Pêxember -selat û selam li ser bin-.”[611]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَنْ أَظْلَمُ مِمَّنْ كَتَمَ شَهَادَةً عِنْدَهُ مِنَ اللّٰهِ وَمَا اللّٰهُ بِغَافِلٍ عَمَّا تَعْمَلُونَ

“Erê ma kî ji wî yî zalimtire, Ew ê ku şehdekiyeka Ellahu Te‘ala li nik hey û ew vedşêrît (anku wan wesfêt Pêxemberê me ewêt ku Ellahu Te‘ala di Tewrat û Încîlê da beyan kirîn)?! Qet Ellahu Te‘ala yî xafil nîne ji wan kar û kiryara; ewêt ku hûn diken.”[612]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ يَكْتُمُونَ مَا أَنـزَلَ اللّٰهُ مِنَ الْكِتَابِ وَيَشْتَرُونَ بِهِ ثَمَنًا قَلِيلاً أُوْلَئِكَ مَا يَأْكُلُونَ فِي بُطُونِهِمْ إِلاَّ النَّارَ وَلاَ يُكَلِّمُهُمُ اللّٰهُ يَوْمَ الْقِيَامَةِ وَلاَ يُزَكِّيهِمْ وَلَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ

“Bê şik ewêt ku ji kitêbê; ji wê wehyê ya ku Ellahu Te‘ala hinartiye xwarê wan rastiya vedşêrin û bi bihayekî kêm (bi malê dinyayê) difiroşin, ew hema her agirî dikerêfin û dikene zikê xwe, qet roja qiyametê Ellahu Te‘ala li gel wan naaxivît û wan ji gunehêt wan paqij naket û bo wan ‘ezabeka gelek biêş û jan jî ya hey.”[613]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ يَكْتُمُونَ مَا أَنزَلْنَا مِنَ الْبَيِّنَاتِ وَالْهُدَى مِنْ بَعْدِ مَا بَيَّنَّاهُ لِلنَّاسِ فِي الْكِتَابِ أُوْلَئِكَ يَلْعَنُهُمُ اللّٰهُ وَيَلْعَنُهُمُ اللاَّعِنُونَ إِلاَّ الَذِينَ تَابُوا وَأَصْلَحُوا وَبَيَّنُوا

611 Sûreta En‘am 20
612 Sûreta Beqere 140
613 Sûreta Beqere 174

“Bê şik ewêt wan delîlêt aşkira (anku wan hukum û ehkamêt dînî Îslamê); ewêt ku Me, hinartîne xwarê û wê rêka hîdayetê; ya ku Me, rohin û aşkira kirî bo mirovan di kitêbê da vedşêrin, Ellahu Te‘ala le‘netê li wan diket û ewêt le‘neta jî diken ew jî her le‘neta li wan dibarînin. Belê, ew têne, ewêt ku tobe kirî, xwe çak û baş kirî; heqî rohin û aşkira kirî û aşkira diken.”[614]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَّقَدْ كَفَرَ الَّذِينَ قَالُوا إِنَّ اللَّهَ ثَالِثُ ثَلَاثَةٍ ۘ وَمَا مِنْ إِلَٰهٍ إِلَّا إِلَٰهٌ وَاحِدٌ ۚ وَإِن لَّمْ يَنتَهُوا عَمَّا يَقُولُونَ لَيَمَسَّنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا مِنْهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ

“Bi sûnd, ew yêt kafir bîn; ewêt gotî û dibêjin: “Ellahu Te‘ala ji siyan yê sê ye.” Qet ji Ellahu Te‘ala pêvetir çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin, Ew hema her îlahekî bitinê ye. Heke ew ji wê lê venebin ya ku ew dibêjin, bi sûnd, ‘ezabeka gelek biêş û jan dê ête serê wan; ewêt ku ji wan kafir bîn.”[615]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَقَدْ كَفَرَ الَّذِينَ قَالُوا إِنَّ اللَّهَ هُوَ الْمَسِيحُ ابْنُ مَرْيَمَ ۖ وَقَالَ الْمَسِيحُ يَا بَنِي إِسْرَائِيلَ اعْبُدُوا اللَّهَ رَبِّي وَرَبَّكُمْ ۖ إِنَّهُ مَن يُشْرِكْ بِاللَّهِ فَقَدْ حَرَّمَ اللَّهُ عَلَيْهِ الْجَنَّةَ وَمَأْوَاهُ النَّارُ ۖ وَمَا لِلظَّالِمِينَ مِنْ أَنصَارٍ

“Bi sûnd, ew yêt kafir bîn; ewêt gotî û dibêjin: “Bê şik Ellahu Te‘ala Mesîhê kurê Meryemê ye!” Haşa, belê Mesîhî jî (anku ‘Îsayî jî) her digote wa: “Ey gelî dûndeha Îsraîlî (zûriyeta Ye‘qûb Pêxemberî!) Hûn her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Ellahu Te‘ala bitinê biken, nê her Ew Rebbê min e û Rebbê hewe ye jî. Bê şik heçî kesê şirîk û hevkûfan bo

614 Sûreta Beqere 159
615 Sûreta Maîde 73

Ellahu Te‘ala çêket, bi sûnd, Ellahu Te‘ala Biheşt ya li ser wî heram kirî, cih û warê wî agire. Bo zalim û zordaran qet çu harîkar nînin û nabin."[616]

Cuhî û File kafir in, welewku ew di demê Pêxemberêt xwe da -silavêt Xudê li ser wan bin- ew jî hîngê Busulman bin, belê piştî hatina Pêxemberê me Muhemmed-

selat û selam li ser bin-heçiyê ji wan yî sax bît, neêt û nebîte tabi‘ê dînê Îslamê; Busulman nebît ew kafire.

Ji xeyrî Ehlûl-kîtaba jî; anku ji xeyrî Cuhî û Fila jî piştî hatina Pêxemberê me-selat û selam li ser bin- ew kesêt tabi‘êt çî rêbaz û dînê hebin heke ew terka wan dîn û rêbaz û fikrêt xwe neken û ew neên û nebine tabi‘êt dînê Îslamê; Busulman nebin ew hemî kafir in.

Ew ê nebêjîte wan; ewêt ku me gotîn kafir yan yê di kafiriya wan da bi şik û guman bikevît ew jî hiştî kafire, yan yê ji dil hej wan biket yan jî yê li hemberî Busulmana destek û hariykariyê bidete wan ew jî wekî wan kafire. Belê, heçî kesê ji Cuhî û Fila bêt Busulman bît ew ducara ji me yî cêtir û baştir e.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَن تَرْضَىٰ عَنكَ الْيَهُودُ وَلَا النَّصَارَىٰ حَتَّىٰ تَتَّبِعَ مِلَّتَهُمْ ۗ قُلْ إِنَّ هُدَى اللَّهِ هُوَ الْهُدَىٰ ۗ وَلَئِنِ اتَّبَعْتَ أَهْوَاءَهُم بَعْدَ الَّذِي جَاءَكَ مِنَ الْعِلْمِ ۙ مَا لَكَ مِنَ اللَّهِ مِن وَلِيٍّ وَلَا نَصِيرٍ

"Ey Muhemmed!) Qet çû caran Cûhî û File ji te razî nabin heta ku tu neçiye ser dînê wan. Tu bêje wa: "Bê şik hema her dînê Ellahu Te‘ala ye (anku dînê Îslamê ye) dînê heq û rast. Bi sûnd, piştî ‘îlm û zanîn (Qur'an) bo te hatî,

616 Sûreta Maîde 72

heke tu bi dûv hewa û hewesê wan bikevî, wê gavê bo te li hemberî Ellahu Te'ala qet çu piştevan û harîkar nabin ku te ji 'ezaba Wî xilas biken."[617]

Ya aşkira ye kîn û neyaretiya Ehlûl-kîtaba, kafir û muşrîkan bo dînê Îslamê û Busulmana heta roja qiyametê dê her ya ber dewam bît.

Ehlûl-kîtab; xudanêt wan her du dîna anku Cuhî û File; ew bawer diken û dibêjin; haşa Xudayê Jorî kurek yê hey; eve ku Cuhî dibêjin 'Uzeyr kurê Xudayê Jorî ye û File jî dibêjin: (Haşa) 'Îsa kurê Xudayê Jorî ye.

Belê Xudayê Jorî ji wê hindê yî pak û beriye, qet Xudayê Jorî çu kur û çu kiç nînin û nabin. Çunku heyina kiç û kura ji xasiyet û wesifêt mirovan; benî adema ye. Xudayê Jorî, (yî pak û beriyê ji hemî kêmasiyan û) yî dûr e ji hemî xasiyet û wesfêt beşera.

Nê ev e Qur'an Kerîm bi xwe ya dibêjît:

لَمْ يَلِدْ وَلَمْ يُولَدْ وَلَمْ يَكُن لَّهُ كُفُوًا أَحَدٌ

"Qet kesek ji Wî nebiye (Ew ne babê kesekê ye) û Ew bi xwe jî ji kesekê nebiye (Wî çu deykûbab jî nînin."[618]

Ehlûl-kîtab anku Cuhî û File; hindî ku ew neyarî û dujminatiya me Busulmana biken, ji ber kafiriya wan divêt, em jî her bi kîndarî berê xwe bideyne wan, qet'iyen çênabît em çû caran bi hejêkirin berê xwe bideyne wan û dînê wan, qet çû caran çênabît em Busulman wan bo xwe bikeyne dost û xweştivî jî.

Mecusî; anku agirperês û senemperês hêj heta evroke jî ew yê heyina xwe bi berdewamî diparêzin, ew jî her

617 Sûreta Beqere 120
618 Sûreta Îxlas 1-4

wekî Cuhî û Fila kafir in, heçî kesê wan kafir nezanît yan yê ne bêjîte wan kafir, ew jî wekî wan kafire.

Dînê Cuhya bi şirkê yê bi dûmahêk hatî; çunku wan digot: Haşa ‘Uzeyir kurê Xudê ye, û dînê Fila jî her wekî dînê Cûhya bi şirkê yê bi dûmahêk hatî; çunku wan digot û yê dibêjin jî: Haşa ‘Îsa kurê Xudê ye!

Ellahu Te‘ala bo me behsê dînê Îslamê diket û dibêjît:

اِنَّ الدّينَ عِنْدَ اللّٰهِ الْاِسْلَامُ

“Bê şik dînê heq (dînê rast, durust û meqbûl) li nik Ellahu Te‘ala hema her dînê Îslamê bitinê ye.”[619]

Herdîsa Ellahu Te‘ala dibêjît:

وَمَنْ يَبْتَغِ غَيْرَ الْاِسْلَامِ دينًا فَلَنْ يُقْبَلَ مِنْهُ وَهُوَ فِى الْاخِرَةِ مِنَ الْخَاسِرينَ

“Heçî kesê ji bilî dînê Îslamê bo xwe li dînekî dî bigerhît û bigrît (anku bi rêbaz û qanûneka dî ‘emel biket) bila ew baş bizanît qet‘iyen Ellahu Te‘ala wî dînî ji wî qebûl naket. Ew di axretê da dê ji wan bît ewêt ku dixusaret.”[620]

Xudê Te‘ala dibêjît:

أَفَمَن شَرَحَ اللَّهُ صَدْرَهُ لِلإِسْلامِ فَهُوَ عَلَى نُورٍ مِّن رَّبِّهِ فَوَيْلٌ لِّلْقَاسِيَةِ قُلُوبُهُم مِّن ذِكْرِ اللَّهِ أُوْلَئِكَ فِي ضَلالٍ مُبِينٍ

“Erê ma Ew ê Ellahu Te‘ala dilê wî bo Îslametiyê berfireh kirî û ew bi xwe jî li ser ronahiyekê bît ji layê Rebbê xwe ve, (ma ew wekî wî ye, yê ku yî bêbahir ji ronahiya

619 Sûreta Alî Îmran 19
620 Sûreta En‘am 85

dînê Îslamê?) Weyl û ‘ezaba dijwar bo wan bît; ewêt ku dilêt wan ji bîr înandina navê Ellahu Te‘ala divala, direq û tarî! Eha ew ew in; ewêt ku di nav alozî û şaşiyeka aşkira da vedigevizin.”[621]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَمَن يُرِدِ اللَّهُ أَن يَهْدِيَهُ يَشْرَحْ صَدْرَهُ لِلْإِسْلَامِ ۖ وَمَن يُرِدْ أَن يُضِلَّهُ يَجْعَلْ صَدْرَهُ ضَيِّقًا حَرَجًا كَأَنَّمَا يَصَّعَّدُ فِي السَّمَاءِ ۚ كَذَٰلِكَ يَجْعَلُ اللَّهُ الرِّجْسَ عَلَى الَّذِينَ لَا يُؤْمِنُونَ

“Vêca yê Ellahu Te‘ala bivêt dê înîte ser rêka heq û rast; dê singê wî bo qebûlkirna nûrha dînê Îslamê rohn û berfireh ket û yê Ew hez biket jî dixirînît; Ew dê singê wî bo qebûlkirna nûrha dînê Îslamê teng ket; her wekî ku ew jêlil bilind dibîte ber ‘esmanî. Eha her hosa Ellahu Te‘ala her ‘ezaba kirêt dadrêjîte ser wan; ewêt ku îman û baweriyê naînin.”[622]

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît, Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Ez bi wî Xudayî sûnd dixwem; Ew ê ku nefsa (ruha) Muhemmedî di destî Wî da, heçi kesê ji vê ummetê (ummeta de‘wê) anku ji Cuhî û Fila yan jî ji ewêt ku xudanêt çî dîn û fikra hebin, ew bi min heshabin û wan zanibît ku Ellahu Te‘ala ez yê kirîme pêxemberê axirê zemanî û bo hemî dinya û ‘alemê yê hinartîm, paşê ew bimrin, ew îman û baweriyê bi min ne înin, îleh ew dê bine ji ehlê agirê cehennemê.”[623]

Nê heçî kesê ji Fila bêt û Busulman bît, ew ducara ji me yî çêtire; çûnku ev e wî guhê xwe da wesyeta ‘Îsa

621 Sûreta Zumer 22
622 Sûreta En‘am 125
623 Muslim

Pêxemberî (silavêt Xudê li ser bin) û ew hat wî îman bi Muhemmedî jî -selat û selam li ser bin- înand û Busulman bû.

Heçî kesê ji Cuya jî Busulman bît, ew jî ducara ji me yî çêtire; çûnku ev e wî îman û bawerî bi Musa Pêxemberî (silavêt Xudê li ser bin) înand û bi Muhemmed Pêxemberê axirê zemanî jî-selat û selam li ser bin- înand. Xudê yê daye Cuhî û Fila heke ku ew têbigehin û bizanin; anku heke ew vê firseta hinde bi rûmet û şeref ji destê xwe nekewn.

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ يَا أَهْلَ الْكِتَابِ تَعَالَوْاْ إِلَى كَلَمَةٍ سَوَاء بَيْنَنَا وَبَيْنَكُمْ أَلاَّ نَعْبُدَ إِلاَّ اللّهَ وَلاَ نُشْرِكَ بِهِ شَيْئاً وَلاَ يَتَّخِذَ بَعْضُنَا بَعْضاً أَرْبَاباً مِّن دُونِ اللّهِ فَإِن تَوَلَّوْاْ فَقُولُواْ اشْهَدُواْ بِأَنَّا مُسْلِمُونَ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje: “Ey gelî ehlê Tewrat û Încîlê! Hûn hemî werin; da ku em û hûn di nav xwe da li ser gotinekê pêk bêyin, ‘eynen wekî êk bi cih bînîn; (çûnkî Tewratê û Încîlê jî berî tehrîf kirnê yê gotî û ev e Qur’an jî ya dibêjît) werin da em û hûn hema her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Ellahu Te‘ala bitinê bikeyn û çu tiştan û kesekê bo Wî nekeyne şirîk û hevkûf û bila em ji bilî Ellahu Te‘ala hindeka ji xwe bo xwe nekeyne Rebb.” Belê, heke wan rûyê xwe bada (û nehatine ser rê), hîngê hûn bêjne wa: “Hûn şahid bin ku bê şik em bi xwe Busulman în.”[624]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ آمَنُوا وَالَّذِينَ هَادُوا وَالصَّابِئُونَ وَالنَّصَارَىٰ مَنْ آمَنَ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الْآخِرِ وَعَمِلَ صَالِحًا فَلَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ

624 Sûreta Alî ‘Îmran 65

“Bê şik ewêt îman û bawerî înandî (anku Busulman bîn) û ewêt dibêjinê Cûhî û Sabîî û File jî heçî kesê ji wan bêt ji dil îman û baweryê bînît bi êkatiya Xudê Te‘ala (û bi Muhemmed Pêxemberî -selat û selam li ser bin-) û roja qiyametê, kar û ‘emelêt baş biket, qet çu tirs bo wan nîne û ew xemgîn jî nabin.”[625]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَن يَكْفُرْ بِالْإِيمَانِ فَقَدْ حَبِطَ عَمَلُهُ

“Heçî kesê piştî hatina Muhemmed Pêxemberî -selat û selam li ser bin- îman û bawerye neînît bi êkatiya Xudê Te‘ala û bi Muhemmed Pêxemberî -selat û selam li ser bin- û wî şirî‘etî yê ku ew pê hatî bê şik hemî kar û ‘emelêt wî dê betal û pûç bin û li axretê jî ew dê ji wan bît ewêt ku dixusaret.”[626]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَتَجِدَنَّ أَشَدَّ النَّاسِ عَدَاوَةً لِّلَّذِينَ آمَنُواْ الْيَهُودَ وَالَّذِينَ أَشْرَكُواْ وَلَتَجِدَنَّ أَقْرَبَهُمْ مَّوَدَّةً لِّلَّذِينَ آمَنُواْ الَّذِينَ قَالُوَاْ إِنَّا نَصَارَى ذَلِكَ بِأَنَّ مِنْهُمْ قِسِّيسِينَ وَرُهْبَانًا وَأَنَّهُمْ لاَ يَسْتَكْبِرُونَ وَإِذَا سَمِعُواْ مَا أُنزِلَ إِلَى الرَّسُولِ تَرَى أَعْيُنَهُمْ تَفِيضُ مِنَ الدَّمْعِ مِمَّا عَرَفُواْ مِنَ الْحَقِّ يَقُولُونَ رَبَّنَا آمَنَّا فَاكْتُبْنَا مَعَ الشَّاهِدِينَ وَمَا لَنَا لاَ نُؤْمِنُ بِاللّهِ وَمَا جَاءنَا مِنَ الْحَقِّ وَنَطْمَعُ أَن يُدْخِلَنَا رَبُّنَا مَعَ الْقَوْمِ الصَّالِحِينَ فَأَثَابَهُمُ اللّهُ بِمَا قَالُواْ جَنَّاتٍ تَجْرِي مِن تَحْتِهَا الأَنْهَارُ خَالِدِينَ فِيهَا وَذَلِكَ جَزَاء الْمُحْسِنِينَ وَالَّذِينَ كَفَرُواْ وَكَذَّبُواْ بِآيَاتِنَا أُوْلَئِكَ أَصْحَابُ الْجَحِيمِ

625 Sûreta Beqere 62
626 Sûreta Maîde 5

“(Ey Muhemmed!) Bi sûnd, tu dê bînî ku Cûhî û ewêt ku şirîk û hevkûf bo Ellahu Te‘ala çêkirîn û çêdken ew ji hemî mirovan pitir û bi dijwarî her dujminin bo wan, ewêt îman û bawerî înandî. Her dîsa bi sûnd, tu dê bînî ewêt ku viyana wan pitir hey bo wan, ewêt îman û bawerî înandî ew ew in; ewêt ku dibêjin: “Em tabi‘êt ‘Îsayî ne.” Çûnkî hinde Qeşe û Rahib ji wan yêt heyîn; qet ew (bo qebûlkirna heqiyê) xwe qude û mezin naken. Demê wan guh li wê Qur’anê dibû ewa ku bo Pêxemberî hatiye xwarê, tu da binî ku çavêt wan ronhdik yêt pêda dibarin; ji ber wê heqiyê ya ku wan diniyasî û dizanî û ew yê dibêjin: “Ey Rebbê me! Ev e Me jî îman û bawerî înand, vêca Tu me jî ji şahidan binvîse.” “Erê gelo ma bo çî em îman û baweryê naînîn bi Ellahu Te‘ala û bi wê heqiyê ya ku bo me hatî? Em ji dil hûviyê ji Rebbê xwe dikeyn ku Ew me bikete di nav qewmê çak û qenc da û bidete li gel wan.” Vêca Ellahu Te‘ala ji ber wê ya ku wan gotî, ew xelat kirin bi wan Biheştêt rengîn; ewêt ku di bin qesrêt wan ra rûbar diherikin û ew heta hetayê dê bimîne tê da. Eha her eve ye, xelatê mirovêt qencîker û xêrxwaz. Belê, ewêt kafir bîn û ayetêt me direw hisab kirîn, eha hema her ew in ehlê Cehnemê.”[627]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَا تُجَادِلُوا أَهْلَ الْكِتَابِ إِلَّا بِالَّتِي هِيَ أَحْسَنُ إِلَّا الَّذِينَ ظَلَمُوا مِنْهُمْ وَقُولُوا آمَنَّا بِالَّذِي أُنْزِلَ إِلَيْنَا وَأُنْزِلَ إِلَيْكُمْ وَإِلَٰهُنَا وَإِلَٰهُكُمْ وَاحِدٌ وَنَحْنُ لَهُ مُسْلِمُونَ

“(Ey gelî îmandaran!) Hûn her bi wê rêkê ya ku ji hemyan baştir hevrikiyê li gel ehlê Tewrat û Încîlê biken; anku Cuhî û Fila. Belê, ji bilî wan; ewêt ku ji wan zilm û

627 Sûreta Maîde 82-86

zordarî kirî ew têne. Hûn bêjne wa: “Me îman û bawerî bi wê Qur’anê ewa ku bo me hatiye xwarê û bi (wê Tewrat û Încîlê jî) ewêt ku bo hewe hatîne xwarê ya înandî û Îlahê me û Îlahê hewe her Îlahekî bitinê ye, em Busulmanîn û em yêt teslîmî emrê Xudê Te‘ala bîn.”[628]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لا يَنْهَاكُمُ اللَّهُ عَنِ الَّذِينَ لَمْ يُقَاتِلُوكُمْ فِي الدِّينِ وَلَمْ يُخْرِجُوكُمْ مِنْ دِيَارِكُمْ أَنْ تَبَرُّوهُمْ وَتُقْسِطُوا إِلَيْهِمْ إِنَّ اللَّهَ يُحِبُّ الْمُقْسِطِينَ إِنَّمَا يَنْهَاكُمُ اللَّهُ عَنِ الَّذِينَ قَاتَلُوكُمْ فِي الدِّينِ وَأَخْرَجُوكُمْ مِنْ دِيَارِكُمْ وَظَاهَرُوا عَلَى إِخْرَاجِكُمْ

“(Ey gelî îmandaran!) Ellahu Te‘ala, nehya hewe naket ji wan kafiran; ewêt ku sera dînî şer li gel hewe nekirî û naken; ewêt ku hûn derne êxistîn ji nav wargeh û welatê hewe ku hûn çakiyê û qenciyê li wan biken û bi ‘edalet bin li gel wan. Bê şik Ellahu Te‘ala, gelek hej wan diket; ewêt ku heqiyê û ‘edaletê bi cih tînin û her bilind radigirin. Belê, Ellahu Te‘ala, hema nehya hewe ji wan kafiran bitinê diket; ewêt ku sera dînî şer li gel hewe kirî û diken; Ew ê hûn derêxistîn ji welatê hewe û bo derêxistina hewe harîkarî kirî ku hûn wan bo xwe bikene dost û piştevan, vêca heçî kesê wan bo xwe bikete dost û piştevan, eha hema her ew in; yêt zalim û zordar.”[629]

Heta Xudê Te‘ala, di vê ayetê da desxetê wan; anku ew tiştê helal yê ku ew serjêdiken û mehirkirna kiçik û jinkêt wan belê piştî ku ji wan paqij dibin û bi rîza wan û bi dana mehra wan, ew di helalin bo Busulmana ku ew

628 Sûreta ‘Enkebut 46
629 Sûreta Mum’tehîne 8-9

wan li xwe mehir bikeyn, bila ew Busulman jî ne bin, belê ne durust e jinkêt Busulman li kafiran bêne mehir kirin.

Xudê Te‘ala dibêjît:

الْيَوْمَ أُحِلَّ لَكُمُ الطَّيِّبَاتُ وَطَعَامُ الَّذِينَ أُوتُوا الْكِتَابَ حِلٌّ لَكُمْ وَطَعَامُكُمْ حِلٌّ لَهُمْ وَالْمُحْصَنَاتُ مِنَ الْمُؤْمِنَاتِ وَالْمُحْصَنَاتُ مِنَ الَّذِينَ أُوتُوا الْكِتَابَ مِنْ قَبْلِكُمْ إِذَا آتَيْتُمُوهُنَّ أُجُورَهُنَّ مُحْصِنِينَ غَيْرَ مُسَافِحِينَ وَلَا مُتَّخِذِي أَخْدَانٍ وَمَنْ يَكْفُرْ بِالْإِيمَانِ فَقَدْ حَبِطَ عَمَلُهُ وَهُوَ فِي الْآخِرَةِ مِنَ الْخَاسِرِينَ

“Ey gelî îmandaran!) Evroke, hemî tiştêt pak û paqij bo hewe hatine helal kirin û xwarin û dest kujê ehlê Tewrat û Încîlê jî bo hewe yî helal e û xwarin û dest kujê hewe jî bo wan yî helal e. Bo hewe helal e hûn wan jinkêt îmandar û hur li xwe mehr biken ewêt ku didehmen paqij û her dîsa bo hewe helal e mehirkirna wan jinka jî ewêt ku ji ehlê Tewrat û Încîlê ewêt didehmen paqij, heke ku hûn mehra wan bidene wan û li xwe mehr biken, neku bi zînakarî û hûn wan bo xwe bi vedizkî ve jî nekene yarik û dostêt xwe. Heçî kesê îman û baweryê neînît bê şik hemî kar û ‘emelêt wî dê betal û pûç bin û li axretê û ew dê ji wan bît ewêt ku dixusaret.”[630]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَا تُنكِحُوا الْمُشْرِكِينَ حَتَّىٰ يُؤْمِنُوا ۚ وَلَعَبْدٌ مُّؤْمِنٌ خَيْرٌ مِّن مُّشْرِكٍ وَلَوْ أَعْجَبَكُمْ ۗ

630 Sûreta Maîde 5

“Hetta zelamêt muşrîk îman û baweryê neînin newebît hûn çu jinkêt Busulman nedenê û li wan mehr neken.”[631]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَا هُنَّ حِلٌّ لَهُمْ وَلَا هُمْ يَحِلُّونَ لَهُنَّ

“Qet jinkêt Busulman dihelal nînin bo kafiran; ku li wan bêne mehir kirin û qet ew kafir jî nedihelalin bo jinkêt Busulman.”[632]

631 221 Sûreta Beqere
Sûreta Mumtehîne 10
632 Sûreta Fatîha 5-7

# ÎSTÎQAMET

Îstîqamet; ewe ku divêt yê îmandar her xwe bi ‘alayê tewîdê ve qaîm girê bidet, û xwe dûr ragirît ji şirkê û kafiriyê û bîd‘a û ji ehlê wan jî, hedîsa divêt, yê îmandar her anegora fehma Selefêt salih Qur’anê û sunneta sehîh fehim biket û di hemî kar û barêt jîn û jiyara xwe da bi viyan li ser xwe tetbîq biket, û her bi rastî û durustî xwe qaîm ragirît li ser wê rêka heq; ewa ku şerî‘etê dînê Îslamê pê hatî, ye‘nî; fer û pêtivêt li ser hemî îmandaran ku ew her wekî şirî‘etî ferman û emir pê day û xwe dûr ragirin ji wan tiştan hemyan ewêt ku şirî‘etî men‘e û qedexe kirîn. Xudayê Jorî, bi vê ayetê ferman diket û dibêjîte me; divêt, ku hûn bibne ji ehlê îstîqametê:

ٱهْدِنَا ٱلصِّرَاطَ ٱلْمُسْتَقِيمَ صِرَاطَ ٱلَّذِينَ أَنْعَمْتَ عَلَيْهِمْ غَيْرِ ٱلْمَغْضُوبِ عَلَيْهِمْ وَلَا ٱلضَّآلِّينَ

“(Ey Xudayê me! Em hîvî û ricayê ji tedikeyn ku) Tu, me li ser rêka vê Qur’ana kerîm rast e rê bike û qayim ragire, ku ew rêk rêka wan kesa ye; ewêt Te qencî û kerem lê kirî, belê Tu me nebe ser rêk (û ta û bayêt) wan; ewêt ku xezeb lê hatiye barandin ku ew Cuhî û heval bendêt wan ne, her dîsa Tu me nebe ser rêk û fikra wan kesa jî, ewêt ku ji rêka heq derketîn û xirhayîn.”[633]

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin-

Her du‘a dikir û digot: Ey Xuda! Her Tu bitinê dila qelb didey û lêk werdigêrî, Tu dilêt me li ser dînê xwe qaîm û mukum ragire.[634]

---

633 Zanayê mezin Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya Hesen e
634 Sûreta Alî ‘Îmran 101

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَ مَن يَعْتَصِم بِاللَّهِ فَقَدْ هُدِيَ إِلَى صِرَاطٍ مُّسْتَقِيمٍ

“Heçî kesê xwe bi dînê Ellahu Te‘ala ve; anku bi dînê Îslamê ve qayim girê bidet, ev e bê şik, ew rast e rê bû û hate ser rêka heq û hidayetê.”[635]

Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: Vê ayeta Sûreta Hûd, eva ku dibêjît: (Festeqîm kema umîrte),

(فَاسْتَقِمْ كَمَا أُمِرْتَ)

Ez yê pîr kirîm.

Ebû Bekrê Sidîq (Xudê jê razî bît) dibêjît: Min gote: Pêxemberî-selat û selam li ser bin- tu yê pîrbî, wî gote minrast e, van sûreta; anku sûreta:

“kuwîret” “Hûd” “Waqî‘e” “Mûrselat” “‘Emme yetesa-elun» û “Îzeşşmsu”, ez yê pîr kirîm.[636]

Sufyanê kurê ‘Ebdullahê Seqefî (Xudê jê razî bît) dibêjît, min got: Ya Pêxemberê Xudê, ka Tu bo min di derheqa dînê Îslamê da gotinekê bêje (anku ka çewa ez Busulman bim), ku ji bilî te ez, pirsyara wê hindê hêdî ji kesekî dî nekem; anku tu we bo min rohn bike û bêje, Pêxemberê Xudê Te‘ala got: Tu ji dîl û bi îman û bawerî bêje: Ev e min îman û bawerî înand bi Xudê Te‘ala û di dûv ra tu xwe rast û durust qaîm ragire (li ser rêka dînê Ellahu Te‘ala.[637]

635 Muslim
636 Sahahu Elbânî
637 Muslim

Xudê Te'ala dibêjît:

فَاسْتَقِمْ كَمَا أُمِرْتَ وَمَن تَابَ مَعَكَ وَلاَ تَطْغَوْاْ إِنَّهُ بِمَا تَعْمَلُونَ بَصِيرٌ

"(Ey Muhemmed!) Vêca tu û ewêt li gel te tobe kirî jî hûn xwe wesa rast û durust ragirin li ser rêka dînê Ellahu Te'ala; her wekî ku emrê hewe pê hatiye kirin, newebît hûn çu zilmê li kesekê neken û ji hedê xwe dernekevin. Bê şik Ellahu Te'ala, wan kar û kiryara; ewêt ku hûn diken hemyan bi timamî dibînît."[638]

Xudê Te'ala dibêjît:

فَاسْتَقِيمُوا إِلَيْهِ وَاسْتَغْفِرُوهُ وَوَيْلٌ لِلْمُشْرِكِينَ

"Vêca hûn hema her xwe bo Ellahu Te'ala li ser rêka dînê heq rast û qayim ragirin û hûn hîviya lê borîn û 'efûkirnê her bo xwe ji Wî bitinê biken. Weyl û 'ezaba dijwar bo wan bît; ewêt ku hevkûf û şirîka bo Ellahu Te'ala çêdken!"[639]

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ قَالُوا رَبُّنَا اللَّهُ ثُمَّ اسْتَقَامُوا تَتَنَزَّلُ عَلَيْهِمُ الْمَلَائِكَةُ أَلَّا تَخَافُوا وَلَا تَحْزَنُوا وَأَبْشِرُوا بِالْجَنَّةِ الَّتِي كُنْتُمْ تُوعَدُونَ

"Bê şik ewêt dibêjin: "Rebbê me hema her Ellahu Te'ala bitinê ye, me ji dil îman û bawerî ya bi Wî înandî" û paşê hûn xwe li ser rêk û rêbaza şerî'etê Wî qayim radigirin, milyaket li demê ew dikevne ber sekerata mirnê ref bi ref dê êne nik wan û dê bêjne wa: "Qet hûn netirsin û

638 Sûreta Hud 112
639 Sûreta Fûsîlet 6

xemgîn jî nebin mizgînî bi wê Biheştê bo hewe bît; ewa ku ‘ehd û soz bo hewe pê hatiye dan.”[640]

Îmam ‘Umerê kurê Xettabî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Îstîqamet bicih înana emr û nehyêt Ellahu Te‘ala ye; anku ew tiştêt şirî‘etî emir pê li te kirî; ku tu hindî şiyana xwe bikey û pê rabî û xwe dûr bikey ji wan tiştan jî ewêt ku şirî‘etî men‘e û qedexekirîn, newebît tu wekî Rûvî yî bi çep û lêhb nebe.[641]

Îstîqamet ew e; ku mirov xwe qaîm ragirît li ser wê rêka rast û durust; ewa ku şerî‘etê dînê Îslamê pê hatî anku qebûlkirna Tewhîdê ye û ‘emelkirna bi wan tişta ye ewêt ku şirî‘etî gotîn; ferman û emir pê dayî. Xudayê Jorî bi vê ayetê ferman diket û ji me dixwazît ku em bibîne ji ehlê îstîqametê:

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَأَن لَّوِ اسْتَقَامُوا عَلَى الطَّرِيقَةِ لأَسْقَيْنَاهُم مَّاءً غَدَقًا

“Nê heke wan xwe li ser rêka heq qayim ragirtiba. Em da aveka gelek boş bo wan hinêrîn û deyne wan.”[642]

Şeyxulîslam Îbin Teymiyê Herranî (Xudê jê razî bît) dibêjit:

(Bo mirovî kerameta ji hemî şeref û kerameta mezintir; ew e ku mirov xwe li ser rêka dînê Îslamê durust û qaîm ragirît.[643]

‘Usmanê kurê Hadirê Ezdî (Xudê jê razî bît) dibêjît; ez çûme dev ‘Ebdullahê kurê ‘Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît), min gotê: Tu wesyetekê; anku şîretekê li min

640 Sûreta Fûsîlet 30
641 Medarus-Salikîn
642 Sûreta Cin 16
643 Medarus-Salikîn

bike, îna wî gote min te êmanet; tu xwe li ser rêka rast û heq baş qaîm ragire; tu çûcara bêsened û delîl çû ‘îbadetî neke, û qet çû bîd‘a çêneke û neavêje di nav dînî da û qet tu bi çû bîd‘a jî ‘emel neke.[644]

644 Ji kitêba şerhu-usul- Î‘tîqad ehl es-Sunne we l-Lcema‘e

# BÎD‘ET: TİŞTÊT NÛ ÇÊKİRÎ

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ مَا كُنتُ بِدْعًا مِّنَ الرُّسُلِ وَمَا أَدْرِي مَا يُفْعَلُ بِي وَلَا بِكُمْ ۖ إِنْ أَتَّبِعُ إِلَّا مَا يُوحَىٰ إِلَيَّ وَمَا أَنَا إِلَّا نَذِيرٌ مُّبِينٌ

“(Ey Muhemmed!) Tu, bêje: “Nê ez ne pêxemberê jirêve me (Ellahu Te‘ala berî min jî gelek pêxember yêt hinartîn), qet ez nuzanim ka Ellahu Te‘ala dê çî li min û çil hewe ket, ez hema her li dûv wê Qur’anê bitinê diçim ewa ku bo min bi wehî têt, ez hişyarker û tirstêderekî aşkira me (bo hemî xelk û ‘alemê).”[645]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ إِنَّمَا أَتَّبِعُ مَا يُوحَىٰ إِلَيَّ مِن رَّبِّي ۚ هَٰذَا بَصَائِرُ مِن رَّبِّكُمْ وَهُدًى وَرَحْمَةٌ لِّقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ

“Bê şik ez hema li dûv wê Qur’anê diçim ewa ku bi wehî bo min têt ji layê Rebbê min ve. Ev Qur’ane ji layê Rebbê hewe ve ya hatî û ew ya tijî nîşan û delîlêt rohn û aşkira ye û rêbera rêka rast e û dilpêvehiye bo wî miletî Ew ê ku îman û baweryê pê tînin.”[646]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَئِنِ اتَّبَعْتَ أَهْوَاءَهُم مِّن بَعْدِ مَا جَاءَكَ مِنَ الْعِلْمِ ۙ إِنَّكَ إِذًا لَّمِنَ الظَّالِمِينَ

“Bi sûnd, heke piştî wê wehyê û zanîna bo te hatî tu bi dûv hewa û hewesê wan bikevî, wê gavê bê şik tu jî dê biye ji wan; ewêt zalim û zordar.”[647]

645 Sûreta Ehqaf 9
646 Sûreta E‘raf 203
647 Sûreta Beqere 145

Divêt, bizanîn bi kirna bîd‘a qet çu xêr nagehîte kesekê welewku, Ew ê wan bîd‘a diket niyeta wî ya xêrê jî bît; çûnku bi nîyeta baş çu tiştê xirab baş nabît, belê bi nîyeta xirab tiştê baş xirab dibît.

Behsê hemî bîd‘a; ewêt ku bi navê dînî têne kirin bi xirabî û nebaşî yê hatiye kirin, nê ya aşkiraye kirna bîd‘a sebeb û egere bo serdaçûn û xirhanê, ma vêca gelo bi xirhan û serdaçûnê çu xêr dê gehîte kesekê?

‘Ebdullahê kurê Mes‘ud (Xudê jê razî bît) dibêjît: Gelek kes yêt heyn; wan divêt, bi wî kar û ‘emelî yê ku ew diken xêr bigehîte wan (dilê wan yî safiye) belê qet çu xêr nagehîte wan, (çûnku ew ‘emelê ew diken ne anegora şirî‘etiye bîd‘e ye).[648]

Îmamê Xezalî (Xudê jê razî bît) di Îhya xwe da dibêjît:

Guneh bi niyeta baş naêne guhorîn; anku nabine ‘îbadet û ta‘et û xêr, divêt, yê cahêl wê çendê ji ‘umumiya gotina Pêxemberî fehim neket; li demê ew dibêjît: Hemî kar û ‘emel anegora niyeta mirovî ne; anku bi nîyeta xudanê xwe ve digirê dayî ne- vêca bila kes we hizir neket û nebêjît: Xirabî bi niyeta baş dê bîte ta‘et û xêr bo xudanê xwe, nexêr.

Şertêt qebûlbîna hemî ‘ibadet û ‘emela sê ne:

1- Divêt, Ew ê wî ‘ibadet û ‘emelî diket yî îmandar û muwehîd bît; Xudê niyasbît, çûnku Xudê Te‘ala çu ‘ibadet û ‘emelî ji muşrîk, kafir û bîd‘etçîya qebûl naket, heta ku ew tobe neken.

648 Darimî, Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît ya sehîhe

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّمَا يَتَقَبَّلُ اللَّهُ مِنَ الْمُتَّقِينَ

“Bê şik Ellahu Te‘ala (‘îbadet û xêra) hema her ji yêt mutteqî û dîndar bitinê werdigirît û qebûl diket.”[649]

2- Divêt, ew ‘ibadet û ‘emelê tête kirin; bi îxlas û viyan bête kirin û yî bê riya bît û ne bo berjewendiyeka dinya yî û ya şexsî bît.

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَاعْبُدِ اللَّهَ مُخْلِصًا لَهُ الدِّينَ

“Vêca tu hema her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Ellahu Te‘ala bitinê bike û her bi muxlisî bo Wî xizmeta dînê Wî bike.”[650]

3- Divêt, ew ‘ibadet û ‘emelê tête kirin yî we bît; wekî şirî‘etî gotî; anku bêkêmkirin û zêde kirin bête kirin.

Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- dibêjît: (Ew kesê tiştekî bêdelîl; ji dev xwe çêket û pavêjîte di nav vî dînê me da, divêt, ew tiştê ne ji dînî bête red û înkar kirin).[651]

Çî ‘ibadet û ‘emelê şertek ji van her sê şertêt me gotîn jê yî kêm bît, ew ‘ibadet û ‘emel bela serê xudanê xwe ye, çûnku ew ‘ibadet û ‘emel yî merdude; anku Xudê Te‘ala qebûl naket û divêt, îmandar wan tiştan hemyan ewêt ku di bê‘esil û sened red biken û qet qebûl neken.

Te dît hinde cahêl û nezanan li demê wan hinde tiştêt şirî‘etî negotîn kirin, gava xêrxwazekî gotê weneke ew

649 Sûreta Maîde 27
650 Sûreta Zumer 2
651 Buxarî

bîde‘ne; çu ‘eslê wan tiştan; ewêt ku tu dikey nîne, ew hema bêrawestan dê bibêjin: Ev e bîd‘a hesene ye, nê ya muhîm hema her qena‘et û dilê safî ye!!??

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَقَدِمْنَا إِلَى مَا عَمِلُوا مِنْ عَمَلٍ فَجَعَلْنَاهُ هَبَاء مَّنثُورًا

“Em dê wan înîn û hindî kar û ‘emelêt wan kirîn hemyan keyne tozeka hûr û dê bi ber bayî êxîn û belav keyn.”[652]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَا تَتَّبِعُوا أَهْوَاءَ قَوْمٍ قَدْ ضَلُّوا مِنْ قَبْلُ وَأَضَلُّوا كَثِيرًا وَضَلُّوا عَنْ سَوَاءِ السَّبِيلِ

“Hişyar bin hûn bi dûv hewa û hewesê wî qewmî û wan kesa nekevin; ewêt ku berî nihe ji rêka heq derketîn û xirhayîn, bê şik wan gelek jî li gel xwe yêt xirandîn û yêt ser rê da birîn û ew bi xwe jî yêt xirhayîn û dûr ketîn ji rêka heq û rast; hîdayetê.”[653]

Xudê Te‘ala dibêjît:

أَمْ لَهُمْ شُرَكَاءُ شَرَعُوا لَهُمْ مِنَ الدِينِ مَا لَمْ يَأْذَنْ بِهِ اللَّهُ

“Yan jî, ma wan hinde şirîk û heval hene, wan bo wan ew dîn û qanûn derêxistîne û çêkirîne; ewêt ku Ellahu Te‘ala hajê ne û çu destûrî pê nedayî?”[654]

652 Sûreta Furqan 23
653 Sûreta Maîde 77
654 Sûreta Şura 21

وَإِنْ أَطَعْتُمُوهُمْ إِنَّكُمْ لَمُشْرِكُونَ

“Nê Heke hûn guhê xwe bidene wan û biya wan biken, bê şik hîngê hûn jî dê bine ji muşrîkan.”[655]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلاَ تَركَنُوا إِلَى الَّذِينَ ظَلَمُوا فَتَمَسَّكُمُ النَّارُ وَمَا لَكُم مِّن دُونِ اللّهِ مِن أَولِيَاء ثُمَّ لاَ تُنصَرُونَ

“(Ey gelî îmandaran!) Newebît, qet çû caran hûn xwe nedene li gel wan; ewêt ku zilm û zordarî kirî û diken heke hûn meyla xwe bidene ser wan agirê wan dê berbîte hewe jî, bo hewe ji Ellahu Te‘ala pêvetir qet çu dost û piştevan nînin û paşê harîkariya hewe jî naête kirin.”[656]

Îmamê Şewkanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Ev ayete şîreteke bo wan kesa; ewêt ku rêdiden û dibêjin: Rûniştina li dev bîd‘etçiya ya durust e!

Serîkehniya dînê Îslamê ya rohn û zelal e. Çunku dînê Îslamê; ji Qur’ana Pîroz û sunneta sehîh e. Vêca dînê Îslamê ji hemî rexan  ve bi dijwarî li hemberî bid’a û bîd‘etçiya bi hişyariyeka gelek mezin yê rawestayî ye û qet rê nadet ku çu bîd‘e serê xwe raken.

Her wekî em hemî dizanîn bid’et ew tiştêt nûne; ewêt ku hindeka hema ji dev xwe bi navê dînî çêkirîn û avêtîne di nav dînî da û li dînî zêde kirîn, qet‘iyen şirî’et van tiştêt bêbinîşe qebûl naket; hemyan ji binî red diket.

Nê demê Tewhîdê; anku ‘eqîda rast û durust cihê xwe di dilê îmandarî da girt, ew gelek bi hêz û quwet dikevît, ew dişêt li hemberî bid‘eçî û mirovêt xirhayî; ewêt ku li ser

655 ûreta En‘am 121
656 Sûreta Hud 113

rêk û fikra mezhebêt batil bikevîte xebateka dijiwar û bi delîlêt rohin û aşkira wan hişyar biket ji xewa wê delalet û xefletê; ya ewa ku ew di nav da berzebîn û ji rêka heq û rast derketîn.

Îmamê Malik (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Ew kesê tiştekî bêdelîl; anku bîd‘eyekê derbêxîte di nav dînê Îslamê da û ew kes wê kirna xwe baş hisab biket, ev e ew, yê we hizir diket ku Muhemmedê-selat û selam li ser bin- haşa xiyaneta ya kirî di Pêxemberîniya xwe da,

Belê pa Xudê Te‘ala dibêjît:

الْيَوْمَ أَكْمَلْتُ لَكُمْ دِينَكُمْ

“Eve evroke Min dînê hewe (anku dînê Îslamê) bo hewe timam û tekûz kir.” Vêca ew tiştê li wê rojê anku li zemanê Pêxemberî û sihabiyêt wî dîn bît; anku wan gotibît û kiribît, me ew qebûle, belê ew tiştê li wê rojê wan negotibît û nekiribît me ew tişt neqebûle û em nakeyîn; (çûnku ew tişt bîd‘e ye).”[657]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِنَّ كَثِيرا لَّيُضِلُّونَ بِأَهوَآئِهِم بِغَيرِ عِلمٍۗ إِنَّ رَبَّكَ هُوَ أَعلَمُ بِٱلمُعتَدِينَ

“Bê şik gelek ji mirovan yêt heyn ew bi nezanînî (bi dûv bayê dilê xwe dikevin) û ew geleka jî li gel xwe dixirînin û di ser rê da diben. Bê şik her Rebbê te çêtir wan diniyasît, ewêt ku ji hedê xwe derketîn û derdikevin.”[658]

657 Sûreta Maîde 3
658 Sûreta En‘am 119

Xudê Te‘ala dibêjît:

الَّذِينَ يَصُدُّونَ عَن سَبِيلِ اللَّهِ وَيَبْغُونَهَا عِوَجًا وَهُم بِالآخِرَةِ هُمْ كَافِرُونَ

“Ew zordarêt rêka dînê Ellahu Te‘ala li ber xelk û ‘alemê digirin, wan divêt, ew rêka dînê Ellahu Te‘ala, wekî hewa û hewesê xwe li ber xelk û ‘alemê xwahir û çep biken.”[659]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لِيَحْمِلُوا أَوْزَارَهُمْ كَامِلَةً يَوْمَ الْقِيَامَةِ ۙ وَمِنْ أَوْزَارِ الَّذِينَ يُضِلُّونَهُم بِغَيْرِ عِلْمٍ أَلَا سَاءَ مَا يَزِرُونَ

“Wan we digot û dikir; da ku li roja qiyametê ew gunehêt xwe bi timamî hilgirin û da hindeka ji gunehêt wan jî hilgirin ewêt ku wan bêyî zanîn xirandîn û di ser rêda birîn. Hûn baş bizanin barê ew dihilgirin barekî gelekî xirab û kirêt e!”[660]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَوْمَ تَبْيَضُّ وُجُوهٌ وَتَسْوَدُّ وُجُوهٌ

“Roja (qiyametê ew roje, ya ku tê da) hinde ser û çav spî dibin û hindek jî reş û tarî dibin.”[661]

‘Abdullahê kurê îmamê ‘Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît), ew li ser me‘na vê ayetê dibêjît: (Li roja qiyametê rûyêt ehlê sunnetê dê spî û sîs bin, û rûyêt bîd‘etçiya dê reş û tarî bin).

Fedlê kurê ‘Eyyadî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Te êmanet, tu xwe li ser rêka heq qaîm ragire, bi pîçekiya wan kesa ewêt ku li ser rêka heq çu zerer nagehînîte te; ne

659 Sûreta E‘raf 45
660 Sûreta Nehl 25
661 Sûreta Alî‘imran 106

bêje eha ev e pîçekin, her dîsa te êmanet tu xwe ji rêkêt delaletê muhafize û dûr bike, tu xwe bi hereboşî û gelekiya wan kesa ewêt ku li ser rêka delaletê xirhayîn nexapîne; ne bêje nê eha ev e gelekin).[662]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلآمُرَنَّهُمْ فَلَيُغَيِّرُنَّ خَلْقَ اللّهِ

"(Îblîsî got): Bi sûnd ez dê emrî li wan kem ku ew wê çêkirnê ya ku Ellahu Te'ala ew pê xuliqandîn û çêkirîn biguhorin (yan jî ez dê emrî li wan kem ku ew heqîqetêt dîn ê Îslamê biguhorin)."[663]

(Tefsîra Ibin kesîr dibêjît: Ye'nî dînê Xudê Te'ala).[664]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلاَ تَتَّبِعُواْ السُّبُلَ فَتَفَرَّقَ بِكُمْ عَن سَبِيلِهِ

"Qet hûn bi dûv çu rêk û ta û bayêt dî nekevin (heke hûn li dûv wan biçin û guhê xwe bidene wa) ew dê hewe ji rêka dînê Ellahu Te'ala dûr û veder ken. Eha Ellahu Te'ala bi vê hindê qewyatiyê li hewe diket; da ku hûn xwe biparêzin û bê-emriya Wî neken."[665]

Mucahîd (Xudê jê razî bît) dibêjît: Me'na wela tet'tebî'u s-subule: Ye'nî bîd'e û şubuhatin.

Qadî ebû Ye'la (Xudê jê razî bît) dibêjît:

(Gotina hemî sihabî û tabi'iya êk e li ser xwe dûr kirin û terk kirna bîd'etçiya).[666]

---

662 Şatibî ya gotî
663 Sûreta Nîsa 119
664 Tefsîra Ibin Kesîr
665 Sûreta En'am 153
666 Es-Selefiye hîyel-Îslam, Sabunî

‘Abdullahê kurê îmamê ‘Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît: Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- di heca xatir xwastinê da xutbek xwand û di nav da got: (Min piştî xwe du tişt yêt hêlayne di nav hewe da hindî ku hûn xwe pê qaîm bigrin, qet çû caran hûn naxirhin û diserda naçin; Kitîba Xudê Te‘ala (anku Qur’ana Pîroz) û sunneta Pêxemberê Wî -selat û selam li ser bin-).[667]

‘Îrbadê kurê Sarîyete (Xudê jê razî bît) dibêjît, Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Min hûn piştî xwe yêt hêlayne li ser ronahiyeka we (anku dînekî we yî zelal û bi delîl û sened) şeva wî ji roja wî ya rohntire, piştî min hema ew kes dê ji vî dînê hinde yî zelal û ron xirhin û serda çin; ewêt ku dihîlak çûyîn û diçin).[668]

‘Ebdullahê kurê Mes‘ud (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Rojekê Em li dev Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin-dirûniştî bûn wî xîçeka rast û dirêj di nav civata me da kêşa,û di dûv ra wî got: Eha ev e rêka dînê Xudê Te‘ala; ya rast e (sîratelmusteqîme), paşê wî ji rexê wê xîçê yê rast ê û yê çepê hinde xîçêt çepexwahr kêşan û di dûv ra wî got: Evêt he rêkêt batilin li ser serê her rêkekê ji van şeytanek yê hey, ew xelkê pê ji dînê Xudê Te‘ala dixirînin û varê diken, paşê wî di dûvra ev ayete xwand:

وَأَنَّ هَذَا صِرَاطِي مُسْتَقِيمًا فَاتَّبِعُوهُ وَلَا تَتَّبِعُوا السُّبُلَ فَتَفَرَّقَ بِكُمْ عَنْ سَبِيلِهِ ذَلِكُمْ وَصَّاكُمْ بِهِ لَعَلَّكُمْ تَتَّقُونَ

“Bê şik eha hema her eve ye, rêka dînê Min ya heq û rast (anku rêka dînê Îslamê; rêka Qur’ana kerîm; (sîratelmusteqîm), vêca hûn hema her bibne tabi‘êt rêka

667 Muwetta
668 Îbn Mace, Elbanî (Xudê ji wan her duka razî bît) ew dibêjin ev hedîs e sehîhe

dînê Min bitinê û li dûv herin û her pê ‘emel biken, qet hûn bi dûv çu rêk û ta û bayêt dî nekevin (heke hûn li dûv wan biçin û guhê xwe bidene wa) ew dê hewe ji rêka dînê Ellahu Te‘ala; ji dînê Îslamê dûr û veder ken. Eha Ellahu Te‘ala bi vê hindê qewyatiyê li hewe diket; da ku hûn xwe biparêzin û bê-emriya Wî neken.”[669]

Îmam Ehmedê kurê Henbel (Xudê jê razî bît) dibêjît:

(Me‘na îtîba‘ê li dûv çûn e; ku mirov bi wî tiştî ‘emel biket yê ku Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- pê hatî û wî tiştî jî yê ku ji sihabiyêt wî hatî, paşê tu bi kirna wî tiştî yî muxeyerî yê ku piştî wan ji tabi‘iya hatî).[670]

‘Ebdullahê kurê Mes‘ud (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Hûn hema her bi delîlêt rast ‘emel biken, hûn bi dûv çu bîd‘a ne kevin û çu bîd‘a îcad neken, nê hema her rêka dînê rast têra hewe heye û besî hewe ye).[671]

Huzeyfê kurê Yemanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Çî ‘îbadetê sihabiyêt Pêxemberi -selat û selam li ser bin- pê ‘îbadet bo Xudê Te‘ala nekir bît, hûn jî wî ‘îbadetê wesa bo Xudê Te‘ala neken; nê yêt berahîkê qet çu gotin bo yêt dûmahîkê nehêla ye).[672]

Îbn Weddah (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Çî bîd‘a hebît îleh ya xemilandî û bêhn xweş e; pê batil li ser şiklê heqiyê tête xemilandin).[673]

Îmamê Ibin el-Qeyîm (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Li demê dilê mirovî bi bîd‘a ve mijûl bibît mirov dê pişta xwe dete sunnetê).[674]

669 Sûreta En‘am 153
670 Ebu Dawud di meselêt îmamê Ehmed da
671 Darimî (Xudê jê razî bît)
672 Îbana îbn Bete (Xudê jê razî bît)
673 Kitêba el-Bide‘ we en-Nhu ‘enha
674 Îxaset el-Lehfan

Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Bê şik kirna bîd‘êt bûçûk poste û serkêşiye bo kirna bîd‘êt mezin).[675]

Îmamê Ehmedê kurê Henbel (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Hişyar be qet çû caran tu bêdelîl di derheqa çu mesela da neaxive).[676]

Mu‘azê kurê Cebelî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Hewe êmanet li wan tiştan dihişyar bin; ewêt ku hindeka bi navê dînî çêkirîn anku li bîd‘a, nê hindî tiştêt bi navê dînî hatîne çêkirîn, ew hemî egerin bo delalet û xirhanê).[677]

Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- dibêjît: (Yê ku bi meqseda dînî kar û ‘emelekî biket, belê emrê me li ser nebît; anku me negotibît divêt, ew tişt bête red û înkar kirin).[678]

Di hedîseka dî da Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- yê gotî:(Hewe êmanet hûn gelek li wan tiştan di hişyar bin; ewêt ku hindek ji dev xwe çêdiken û ditavêjne di nav dînî da, ew tiştêt bêdelîl û ewêt ku ji nûy hatîne çêkirin ew hemî bîd‘e ne, û hemî bîd‘e berê xudanê xwe didene delalet û xirhanê).[679]

‘Abdullahê kurê îmamê ‘Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît: (Te êmanet teqwatî; ji Xudê Te‘ala bitirse û xwe qaîm li ser rêka dînê Wî ragire, tu her bi delîlêt rast ‘emel bike, çû caran bi dûv çu bîd‘a nekeve û çu bîd‘a îcad neke).[680]

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Xudê Te‘ala bo

675 Sîlsîletus-Sehîhe
676 Sîyer E‘lam en-Nubela
677 Ebu Dawud
678 Muslim
679 Şu‘eyib Ernawutî (Xudê jê razî bît) dibêjît; Ev hedîs e ya sehîh e
680 Ed-Durer es-Senî ye

vê ummetê li serê her set sala ‘alimekî we di nav wan da dê radiket; ku ew dê bo wan dînê wan ji bîd‘a paqij û adeket).[681]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّا نَحْنُ نَزَّلْنَا الذِّكْرَ وَإِنَّا لَهُ لَحَافِظُونَ

“Bê şik Me, Qur’an (bo Muhemmedî -selat û selam li ser bin) bi rêka wehyê ya hinartiye xwarê û bê şik hema her Em bi xwe jî dê wê muhafize û sitare keyn; (ji kêmkirin û zêdekirnê, û ji tehrîf û guhorînê).”[682]

Vêca ka çewa Xudê Te‘ala bi vê ayeta pîroz, we‘de da ye; ku Ew dê Qur’ana Pîroz muhafize û sitare ket, ‘eynen ev we‘dê Xudê Te‘ala şamilî sunnetê ye jî; anku Xudê Te‘ala dê sunnetê ji her wekî kelamê xwe; Qur’ana Pîroz dê muhafize û sitare ket; çûnku sunneta durust û sehîh şerha Qur’anê ye. Her wekî em hemî baş dizanîn berêbinyatî û serîgehniya şerî‘etê dînê Îslamê Qur’an û sunneta sehîhe, qet Qur’an bêyî sunnet naête zanîn û fehim kirin.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَأَنْزَلَ اللَّهُ عَلَيْكَ الْكِتَابَ وَالْحِكْمَةَ

“Ellahu Te‘ala kitêb û hîkmet (anku sunnet) bo te yêt hinartîne xwarê.”[683]

Meqsed ji kelîma Hîkmet di Qur’anê da, sunneta Pêxemberê Xudê Te‘ala ye-selat û selam li ser bin.

Îmamê Şafi‘î (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Min ji wan ‘alima yê guhlê bî; ewêt ku di derheqa Qur’anê da ez jê

681 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya sehîh e
682 Sûreta Hicr 9
683 Sûreta Nisa 113

razî, wan hemyan her digot: (Hîkmet, sunneta Pêxemberê Xudê Te'ala ye).[684]

Pêxemberî-selat û selam li ser bin-yê gotî: (Xwe hişyar biken û baş bizanin, Xudê Te'ala hindî Qur'anê li gel Qur'anê yê daye min û bo min yê hinartî).[685]

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- yê gotî: Îslametî bi xerîbî ya çêbî, careka dê her wekî berahîkê dê xerîb bîte ve.. Xweziya li wan xerîba).[686]

Hindeka got: Ey Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin- Ew xerîb kîne? Îna wî got: (Ew ew in ewêt ku wan sunnetêt min; ewêt ku berze û mirîn sax û aşkira diken)

Bîd'et ew kar, 'emel û gotinin; ewêt ku Xudayê Jorî û Pêxemberê wî (silavêt Xudê Te'ala lê bin) negotîn; destûrî û emir bi kirin û gotina wan nedayî.

Em nexudanêt vî dînîne, em xizmetkar û xulamêt vî dînîne, dîn êmanetê Xudê ye, nê hema her Xudê ye xudanê vî dînî. Vêca divêt, bêy jê kêmkirin û lê zêdekirin qebûl bikeyn û her pê 'emelbikeyn û bo xelk û 'alemê bi zanîn bêjîn û belav bikeyn.

Xudê Te'ala dibêjît:

وَاعْتَصِمُوا بِحَبْلِ اللَّهِ جَمِيعاً وَلا تَفَرَّقُوا

"Hûn hemî pêk ve xwe bi werîsê Xudê Te'ala ve qayim bigirin (anku hûn hemî pêk ve ji dil xwe di Qur'ana Wî werken; pê 'emel biken) û newebît hûn jêk belav nebin."[687]

684 Er-Risale
685 Zanayê mezin Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya Sehîhe
686 Muslim
687 Sûreta Alî 'Îmran 103

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ هَٰذِهِ سَبِيلِي أَدْعُو إِلَى اللَّهِ ۚ عَلَىٰ بَصِيرَةٍ أَنَا وَمَنِ اتَّبَعَنِي وَسُبْحَانَ اللَّهِ وَمَا أَنَا مِنَ الْمُشْرِكِينَ

“(Ey Muhammed!) Tu bêje wa: “Eha her eve ye, rêka min, ez û Ewêt li gel min jî, em her bi delîlêt rohn û aşkira û bi ‘îlim û zanînê gazî xelk û ‘alemê dikeyn; da ku ew bêne ser rêka dînê Ellahu Te‘ala. Ellahu Te‘ala yî pak û beri ye ji hemî kêmasiyan, ez bi xwe qet ne ji wa me; ewêt ku hevkûf û şirîka bo Ellahu Te‘ala çêdken.”[688]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَمَنْ تَبِعَ هُدَايَ فَلَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ

“Vêca heçî kesê bi dûv wê rêka Min ya hîdayetê bikevît, qet çu tirs bo wan nîne û ew xemgîn jî nabin.”[689]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَمَنِ اتَّبَعَ هُدَايَ فَلَا يَضِلُّ وَلَا يَشْقَىٰ

“Vêca heçî kesê bibîte tabi‘ê rêka Min ya heq û rast; qet ew di dinya yê da şaş nabît û li axretê jî çu îza û zehmeta nabînît.”[690]

Xudê Te‘ala dibêjît:

اتَّبِعُوا مَا أُنْزِلَ إِلَيْكُمْ مِنْ رَبِّكُمْ وَلَا تَتَّبِعُوا مِنْ دُونِهِ أَوْلِيَاءَ قَلِيلاً مَا تَذَكَّرُونَ

688 Sûreta Yûsuf 108
689 Sûreta Beqere 38
690 Sûreta Taha 123

“(Ey gelî mirovan!) Hûn hema her li dûv wê Qur’ana kerîm herin û pê ‘emel biken; ewa ku ji layê Rebbê hewe ve bo hewe hatiye xwarê, newebît hûn ji bilî Ellahu Te‘ala bi dûv çu dost û rêberêt dî nekevin. Belê, hûn kêm guhê xwe didene we‘z û şîreta û kêm ‘îbreta bo xwe digirin!”[691]

Îmamê Henefî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Qet‘iyen çû caran hûn li dûv yê bîd‘etçî nivêjê neken).[692]

Fedlê kurê ‘Eyadî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Tu xwe hişyarke; çû caran li dev mirovê bîd‘etçî ne rûne, ez gelek ditirsim ku le‘net li te jî bibarin).[693]

‘Abullahê kurê ‘Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît: (Tiştê ji hemî tiştan pitir Xudê Te‘ala kerb jê vedibin bid‘eye; anku ew tiştêt bi navê dînî ji nû hatîne çêkirin…).[694]

Êkî gote Îmamê Ewza‘î (Xudê jê razî bît), tu çî dibêjî bo Zelamekî yê ku dibêjît: Ez li dev ehlê sunnetê û li dev bîd‘etçiya jî dirûnme xwarê). Îmamê Ewza‘î (Xudê jê razî bît) Got ev e zelameke wî divêt, ferqê ne êxîte di navbeyna heqiyê û batilî da!).[695]

‘Abdullahê kurê îmamê ‘Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît: (Hindîku salek bi ser mirovan da bêt îleh ew dê bîd‘eyekê derêxne nav dînî û ew dê sunnetekê raken û kujin, heta ku bîd‘e bi zêdehî dê sax bin û sunnet dê mehu bît û mirît).

Îmamê Ebu Henîfe (Xudê jê razî bît) dibêjît:

Ew tiştê ji layê Xudê Te‘ala ve hatî, ew li ser ser û her du çavêt me; semî‘na we ete‘na, ew tiştê zar Pêxemberê

691 Sûreta E‘raf 3
692 Fîqhul-ekber şerha ‘Elî el-Qari’
693 Îrşad es-Sarî îla tewdîh şerh es-Sunne
694 Beyheqî (Xudê jê razî bît)
695 Îbn Bete îbane

Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin-hatî em dê guhê xwe deynê û dê ‘emel pê keyîn, û ew tiştê zar sihabiya hatî (Xudê ji wan hemyan razî bît) em di nav gotinêt wan da dimuxeyerin; em dê her bi gotina hindeka ji wan keyn, belê ew tiştê zar tabi‘iya hatî ew zelam bûn û em jî zelamîn).[696]

Îmamê Şafi‘î (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Yê di şirî‘etî da gotineka bêdelîl bêjît; anku ji dev xwe tiştekî bi navê dînî çêket; ev e wî ji dev xwe bi wê bîd‘ê tiştek çêkir û kire dîn û şirî‘et).[697]

Îmam Ehmedê kurê Henbel (Xudê jê razî bît) dibêjît:

(Bo mirovê bîd‘etçî çu xeybet nîne; anku durust e mirov pavêjîte bîd‘etçiya; da ku xelk û ‘alem ne kevne nav tebik û davêt wa).[698]

Îbn Receb (Xudê jê razî bît) dibêjît: Heçî kesê tiştekî ji dev xwe çêket û pavêjîte di nav dînî da û bêjît: Ev e ji dînî ye, û dî dînî da çu ‘esil bo wî tiştî ne bît ku mirov bete ser wî eslî, ew delalete û dîn yî dûr û beriye ji wî tiştî.[699]

Nê meselêt ‘eqîdê û ‘îbadetî di tewqîfîne; anku ka çewa ew ji dev Xudayê Jorî û Pêxemberê Wî hatîne; divêt, hema her wesa em baweriyê pê bînîn û wekî hatîn bê zêdehî û kêmkirin pê ‘emel bikeyîn.

Divêt, em bîd‘etçiya ji ber wan bîd‘eta; ewêt ku ew diken hişyar û tenbîh bikeyn, anku lazime em xwe li hemberî wan bêdeng nekeyn; da ku guneh û webala wan û ewêt guhê xwe didene wan jî nekevîte sitûwê me.

696 Mebsuta Serxisî
697 Duret elwa ‘izîn Îbrahîm ‘Ebdulbaqî
698 Tebeqat el-Henabîle
699 Kitêba Cami‘ûl-‘Ulumî we Hîkem

Divêt, em bêjîne wa: Her tiştekî hûn dibêjin û diken divêt, ji layê dînî da delîlê hewe pê hebît; çunku dînê Îslamê dînê delîl û senedê ye û dînê Îslamê yê temame û yî bêkêmasî û qusûriye ji hemî la ve.

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنَّمَا يَفْتَرِي الْكَذِبَ الَّذِينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِآيَاتِ اللَّهِ

"Bê şik hema ew dê direw û bêbextiya diken; ewêt ku îman û baweriyê naînin bi ayetêt Qur'ana Ellahu Te'ala."[700]

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- yê gotî: Heçî kesê ji bêbextî direwekê li min biket (anku ew tiştê min negotî, ew bêjît Pêxemberî yê gotî yan jî yê bi zanîn me'na gotinêt min biguhorît û xirab biket), bila ew kes baş bizanît ew bi wê direwa wî zar min kirî û gotî, ew xwe di nav agirê Cehnemê da cihwar diket.[701]

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- yê gotî: Ew kesê bêjît Pêxemberî ev gotine ya gotî û ew dizanît jî ku Pêxemberî ew gotin negotiye, ew jî direwîneke ji mirovêt direwîn.[702]

Xudê Te'ala dibêjît:

قُلْ هَاتُوا بُرْهَانَكُمْ إِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: "Pa dê ka hûn delîlê xwe bînin, heke we ye ku hûn rast dibêjin."[703]

700 Sûreta Nehl 105
701 Buxarî û Muslim
702 Muslim
703 Sûreta Nemil 64

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ هَلْ عِندَكُم مِّنْ عِلْمٍ فَتُخْرِجُوهُ لَنَآ ۖ إِن تَتَّبِعُونَ إِلَّا ٱلظَّنَّ وَإِنْ أَنتُمْ إِلَّا تَخْرُصُونَ

“Tu bêje wa: “Erê ma li ser wê hindê anku ya hûn dibêjin ka li nik hewe çu ‘îlim û zanîn heye ku hûn bo me bîne derê û nîşa me biden? Belê, hûn hema yê li dûv hizir û xiyala diçin û ji direwa pêvetir qet çu dî hûn nabêjin.”[704]

Xudê Te‘ala dibêjît:

الْيَوْمَ أَكْمَلْتُ لَكُمْ دِينَكُمْ وَأَتْمَمْتُ عَلَيْكُمْ نِعْمَتِي وَرَضِيتُ لَكُمُ الْإِسْلَامَ دِينًا

“Nê evro ke Min dînê hewe (anku dînê Îslamê) bo hewe tekûz kir, Min qencî û çakiyêt xwe li ser hewe timam kir, Min dînê Îslamê bo hewe hilbijart û kire dînê hewe.”[705]

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin-yê gotî:

(Bi rastî hindî tiştêt ji nû li dînî têne zêde kirin ew hemî bid’en e û her bid’eyeka hebît ser kêşe bo xirhan û serda birinê.)[706]

Îmam Malik (Xudê jê razî bît) dibêjît: “Ew kesê di dînê

îslamê da bid’eyekê çêket û baş bibînît, ev e bi rast î wî wehizir kir ku Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin-xiyanet ya di pêxemberîniya xwe da kirî (haşa).

704 Sûreta En‘am 148
705 Sûreta Maîde 3
706 Buxarî

Belê, Xudê Te‘ala dibêjît: “Eha eve evro ke min dînê hewe bo hewe tekûz kir û min qenciya xwe li ser hewe temam kir.[707]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ إِنْ كُنْتُمْ تُحِبُّونَ اللهَ فَاتَّبِعُونِي يُحْبِبْكُمُ اللهُ وَيَغْفِرْ لَكُمْ ذُنُوبَكُمْ وَاللهُ غَفُورٌ رَحِيمٌ قُلْ أَطِيعُوا اللهَ وَالرَّسُولَ فَإِنْ تَوَلَّوْا فَإِنَّ اللهَ لَا يُحِبُّ الكَافِرِينَ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: “Heke rast e hûn hej Ellahu Te‘ala diken, hûn li dûv min werin; bi wê ‘emel biken ya ku ez bo hewe dibêjim. Ellahu Te‘ala dê hej hewe ket û dê gunehêt hewe ‘efûket. Ellahu Te‘ala gelekî ‘efûkere û yî birehm û merhemet e. (Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: “Hûn her bi gotina Ellahu Te‘ala; Qur’ana kerîm û bi hedîsêt Pêxemberê Wî ‘emel biken.” Belê, heke wan pişta xwe da vê gazya te, bê şik qet çû caran Ellahu Te‘ala hej kafiran nekirye û naket.”[708]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَالسَّابِقُونَ الأَوَّلُـونَ مِنَ الْمُهَاجِرِينَ وَالأَنـصَـارِ وَالَّذِيـنَ اتَّبَعُوهُم بِإِحْسَانٍ رَّضِيَ اللَّهُ عَنْهُمْ وَرَضُواْ عَنْهُ وَأَعَدَّ لَهُمْ جَنَّاتٍ تَجْرِي تَحْتَهَا الأَنْهَارُ خَالِدِينَ فِيهَا أَبَدًا ذَلِكَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ

“Ewêt ji Mihacir û Ensariya berî hemyan Busulman bîn û ewêt bi qencî û çakî bîne tabi‘êt wan û li dûv wan çûyîn, Ellahu Te‘ala ji wan razî bû û ew jî ji Ellahu Te‘ala dirazî ne, û Ellahu Te‘ala ew Biheştêt rengîn bo wan yêt hazir û amade kirîn; ewêt ku di bin qesrêt wan ra rûbar

707 Kitêba Î’tîsam
708 Sûreta Alî ‘Îmran 32

diherikin û ew heta hetayê dê bimîne di nav wan Biheşta da. Eha her eve ye, rûspiyatî û serketina mezin."[709]

'Ebdullahê kurê Mes'ud (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- yê gotî: (Piştî min kar û barêt hewe dê kevne di destê hinde zelama da, ew dê sunnetê ji nav hewe raken û temirînin, û ew dê bi bîd'a 'emelken, û ew dê kirna nivêjan ji wextê wan te'xîrken. 'Ebdullahî got; Ya Pêxemberê Xudê heke em gehiştîne wan, em çîbkeyn? Pêxemberî gotê: Tu yê pirsyarê ji min dikey ya kurê deyka 'ebdî û dibêjî: Em çî bikeyn? Nê divêt, qet mirov guhê xwe nede te wî yê ku bê-emriya Xudê Te'ala diket).[710]

Îmamê ebu Henîfe (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Te êmanet, tu hema her xwe bi sunnetê û rêka Selefêt salih ve girêbide, tu gelekî yî hişyar be û bizane her tiştekî (bi navê dînî) bêdelîl û ji nû hatiye çêkirîn ew bîd'eye û ne ji dînî ye).[711]

Îmamê Ewza'î (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Li demê bîd'et bi aşkirahî hatne kirin ehlê 'îlmî û 'alima înkar û redda wan nekir, hîngê kirna wan bîd'a li dev xelk û 'alemê dê şitî kirna sunnetê lê têt).[712]

Fer û pêtivî ye li ser me; ku em bid'êt di dînî da têne kirin û bid'êt dinyayî jêk ferq û cuda bikeyn û baş bizanîn; da ku em xwe dihîlak nebeyn û kesekê jî ne xapînîn.

709 100 Sûreta Tewbe
Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya Sehîhe
710 Kitêba zem et-Tewîl îbn Qudame el-Meqdsî
711 Ji kitêba Şeref ehlul-Hedîs
712 Sûreta 'Eleq 5

Xudê Te‘ala dibêjît:

عَلَّمَ الإِنْسَانَ مَا لَمْ يَعْلَمْ

“Xudê Te‘ala ew tişt yêt ku mirovan ne dizanîn yêt nîşa mirovî dayî û dê det.”[713]

Enes û ‘Aîşe (Xudê ji waher duka razî bît), ew dibêjin:

Carekê Pêxemberî -selat û selam li ser bin- li Medîna pîroz diber hindeka ra diborît, berê xwe didetê ku ew yê darêt Qespa nêr û mê diken, îna Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin- gote wa: Nê heke hûn we ne ken jî dê çêbin (wa darqespêt xwe hêlan û wê salê nêr û mê nekirin). Enes dibêjît: Li wextê çinînê berê xwe didenê ku di şilxin. Enes dibêjît: Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin- di ber wan ra borî û gote wa: Çil Qespêt hewe hatiye? wan got: Eha di hosa ne; anku di şilixin. Pêxemberî gote wa: Hun bo kar û barêt dinya xwe ji min di zanatirin; ye‘nî bo nêr û mêkirna darqespa.[714]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَالْخَيْلَ وَالْبِغَالَ وَالْحَمِيرَ لِتَرْكَبُوهَا وَزِينَةً وَيَخْلُقُ مَا لاَ تَعْلَمُونَ

“Û Xudê Te‘ala hesp û hêstir û ker jî bo hewe yêt xuliqandîn û dayn da ku hûn lê wan suwar bin û bo xemil û cuwaniyê. Ellahu Te‘ala dê wan barhilgira jî bo hewe xuliqînît û çêket ewêt ku hewe çu zanîn pê ney (anku dê bi destêt hewe bo hewe dete çêkirin û peyda ket).”[715]

Divêt, em baş bizanîn ev aletêt nû; evêt ku vî zemanî derketîn, anku ev sîn‘et ‘u teknolojiya hinde bi selabet û ‘ecêbî, kerem û nî‘meteka gelek mezin e, Xudê Te‘ala

713 Muslim
714 Sûreta Nehl 8
715 Sûreta Îbrahîm 34

ya daye mirovêt vî zemanî, berê xwe bidene înternetê, bilgîseyara, telefona, televizyona, teyara, ‘ereba û papora, sîlehê nûdem, aletêt xwarinê û cilka û nav malê û ‘ilmê kêmyayê û fizyayê û gelek û gelek tiştê dî jî; ewêt ku her sal têne çêkirin û peyda dibin.

Ev tişte hemî bid‘ene; anku ji nûka yêt peydabîn û hatîne çêkirin, belê ev tişte bid‘a dinyayî ne, ne ya dînî ne, qet bi çêkirin û ‘emelkirna van tiştan çu guneh nagehîte mirovî.

Belê, divêt, li vî zemanî hindek ji Busulmana hebin ku ew van tiştan bi zanîn; anku bizanîn van tiştan çêken, çûnku zanîn û çêkirna van tiştan li ser Busulmana ferzulkîfayete, nê heke çu Busulman van tiştan nezanin û çêneken û ew dê muhtacî kafiran bin; ev e hîngê ew dê di jîn û jiyara xwe da şepilin û paşve mînîn.

Nê heke hindek ji Busulmana van tişta nezanin û çêneken Busulman hemî dêgunehkar û perîşan bin!

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِنْ تَعُدُّوا نِعْمَةَ اللَّهِ لَا تُحْصُوهَا

“Heke hûn rabin wan nî‘met û danêt Ellahu Te‘ala; ewêt ku Wî ji kerema xwe dayne hewe bihejmêrin; qet hûn neşên wan hemyan bihejmêrin; hindî ew hind gelek in. ”[716]

716 Sûreta Nehl 18

## BÎD‘ETA HESENE

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَمَا لِهَؤُلاء الْقَوْمِ لاَ يَكَادُونَ يَفْقَهُونَ حَدِيثاً

“Vêca gelo ma vî qewmî çi ye, bo çî hinde ew dikorefehm in û di çu gotina nagehin?” [717]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ هَلْ نُنَبِّئُكُمْ بِالْأَخْسَرِينَ أَعْمَالاً الَّذِينَ ضَلَّ سَعْيُهُمْ فِي الْحَيَاةِ الدُّنْيَا وَهُمْ يَحْسَبُونَ أَنَّهُمْ يُحْسِنُونَ صُنْعاً

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje ey gelî mirovan! “Erê Em bo hewe bêjîn ewêt ku di kar û ‘emelêt xwe da ji hemyan dixusaretir ka ew kîne “Ew ew in; ewêt ku hemî kar û ‘emelêt wan di jîn û jiyara dinyayê da betal û pûç bîn. Bê şik wan we hizir dikir ku ew yê kar û ‘emelêt baş jî bo xwe diken?”[718]

Xudê Te‘ala dibêjît:

أَفَمَنْ زُينَ لَهُ سُوءُ عَمَلِّهِ فَرَّآهُ حَسَنًا

“Erê ma Ew ê şeytanî kar û ‘emelêt wî yêt xirab û kirêt bo xemilandin û ew bi xwe jî wan ‘emelêt xwe yêt xirab baş bibînît, (erê ma ev e, wekî wî ye yê ku xirabiyê xirab dibînît û xwe jê didete paş?).”[719]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنْ يَتَبِعُونَ إِلا الظَنَ وَمَا تَهْوَى الأَنْفُسُ

717 Sûreta Nîsa 78
718 Sûreta Kehf 103
719 Sûreta Fatir 4

"Bê şik ew hema bi dûv hizir û xiyala û wî tiştî dikevin Ew ê ku dilê wan dixwazît."[720]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمَا يَتَّبِعُ أَكْثَرُهُمْ إِلَّا ظَنًّا ۚ إِنَّ ٱلظَّنَّ لَا يُغْنِى مِنَ ٱلْحَقِّ شَيْـًٔا ۚ إِنَّ ٱللَّهَ عَلِيمٌۢ بِمَا يَفْعَلُونَ

"Bahra pitir ji wan hema yê bi dûv hizir û xiyala dikevin, bê şik hizir û xiyal çû caran cihê heqiyê nagirin û faydeyî na dene mirovî. Ellahu Te'ala yî zana ye bi wan tiştan hemyan ewêt ku ew diken."[721]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلاَ تَلْبِسُواْ الْحَقَّ بِالْبَاطِلِ وَتَكْتُمُواْ الْحَقَّ وَأَنتُمْ تَعْلَمُونَ

"Hûn heqiyê di nav batilî hilneken û hûn bi zanîn jî heqiyê neveşêrin."[722]

Vêca gelek cara te dît hindeka hema ji dev xwe got: Ev tişte bîd'a HESENE YE; anku bîd'eyeka baş e, qet çu tiştê we nîne, çunkî Pêxemberê me -selat û selam li ser bin- yê gotî: "Hemî bîd'et (anku kirna wa) egere bo xirhan û serdaçûnê" ev e ew yê bo me dibêjît û aşkira diket ku kirna her bîd'a hebît di dînî da ya xirab e û ne durust e; yê Busulman pê 'emel biket.

Nê her wekî ehlê sunnet û cema'etê dibêjin cuwanî û kirêtî (anku xirabî û başî û durustî û nedurustî) bi gotina şirî'etiye ne bi aqilê mirova ye).

720 Sûreta Necm 24
721 Sûreta Yunus 36
722 Sûreta Kehf 204

‘Abdullahê kurê îmamê ‘Umer (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît: (Heçî bîd‘a hebît delalete, çenda ku mirov baş bibînin jî).[723]

Îmamê Xezalî (Xudê jê razî bît) di kitêba xwe (Lîcam el-‘ewam) da dibêjît: (Hemî bîd‘e delaletin û dimezmumin).

Îmamê Rebanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Qet çu bîd‘êt baş; anku hesene nînin, hemî bîd‘e dixirabin; di mezmumin).[724]

Vêca divêt, em hema her bi sebir û xwe ragirtineka qaîm li ser rêk û dewsa Selefêt xwe yêt salih bitinê dirêjiyê bideyne jîn û jiyara xwe, da ku Busulmanetiya me ya rast û durust bît.

Îmam Ebu ‘Emir ez-Zucacî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Mirov di dewrê cahêlîyê da bi dûv wan tiştan diketin; ewêt ku aqil û tebî‘etê wan cuwan didîn, belê piştî Pêxemberê Xudê Muhemmd -selat û selam li ser bin- hatî, wî ew zivirandine bal şirî‘etî ve; ku ew li dûv biçin û pê ‘emel biken. Vêca aqilê durust e w e;: Yê ku ka şirî‘et çî tiştî cuwan dibînît ew, wan tiştan cuwan bibînît û bizanît, û ew tiştêt şirî‘et kirêt û nebaş dibînît, ew jî wan tiştan kirêt bibînît û bizanît.[725]

Şêx Salih bin Fewzan bin ‘Ebdullah el-Fewzan (Xudê jê razî bît) li ser pirsyara cewabekê dibêjît: Qet‘iyen çu delîl di destê wî kesî da nînin, Ew ê bîd‘ê dikete bîd‘a hesene û bîd‘a seyîe; çunku bîd‘e hemî seyî’ene; ji ber gotina Pêxemberê Xudê Te‘ala -selat û selam li ser bin- ev e li

723 Îbn Bete, Înabe
724 Mektubat wî
725 Kitêba selah el-Ummet vî ‘uluwî el-hîme

demê ku ew dibêjît: Hemî bîd‘e egerin bo delaletê, delalet li gel xudanê xwe dê çîte  di nav agirê cehenemê da.[726]

Îbin Receb (Xudê jê razî bît) dibêjît: Ewa di nav gotinêt hinde Selefa da hatî; ku ew dibêjine hinde bîd‘a, bîd‘a hesene, ew behsê bîd‘êt lu‘ewiye, ne yêt şir‘iye.[727]

Divêt, bizanîn qet çu bîd‘êt hesene di nav şirî‘etî da nînin; hemî bîd‘e di qebîh û munkerin, ev e gotina her du îmamêt xudan qedre anku îmam ebu Henîfe û îmam Ehmedê kurê Henbele (Xudê ji wan her duka razî bît).[728]

726 Muslim
727 Kitêba Camî‘ul-‘Ulum we el-hîkem ya Îbin Receb
728 Mustele min şerh sehîh Muslim, kîtab ez-Zekat ya şêx ‘Ebdullah bin Hemud

## SELEF Û SELEFÎ KÎNE

Fer e em baş bizanîn Selefiyeta rast û durust de‘we û doza hemî îmandara ye di dinya yê da; çûnku Selefiyet ne partiyeke, ne fikreke, ne cima‘eteke, ne firqeyeke, ne komeleyeke, ne teketuleka siyasî ye; ku bibîte egera fitne û qetluxûna di nav mirovan da nexêr; belkî Selefiyet rêk û rêbazeke avabîna wê ya li ser Qur’an û Sunnetê bi têgehiştina fehma Selefêt salih.

Mirovêt Selefî bi gotin, kirin, ‘eqîde û exlaqê xwe didiyar û aşkira ne li hemî cih û ‘erda, mirovêt Selefiyêt rast qet bi çu şexsa, bi çu partiya, bi çu cima‘eta, bi çu firqa, bi çu komela, bi çu teketulêt siyasî, bi çu welat û dewleta ve di girêdayî nînin û nabin jî, lewma mirovê Selefî her yî ser bilinde û qet ew ji kesekê natirsît.

Çûnku rêk û rêbaza Selefêt salih ne demekî tarîxî yî vebiriye û ne cema‘eteka mezhebiya tixûb kirye, belkî ew rêk û rêbazeka berdewame, qet ew bi çu zeman û cihave ya girêdayî nîne ji xeyrî Qur’an û Sunnetê pêvetir.

Hindîku Selefiyetiye cima‘eta wan îmandara ye; ewêt ku hema her bi Qur’an û Sunnetê ve digirêdayî; li ser rêka Selefêt salih. Ji ber vê hindê divêt, te‘rîfa Selefiyetiyê ya cami’ û mani’ bît; anku şamilî hemî Selefiyêt berahîk û dûmahîkê bît; çûnku li dewrê Selefêt salih gelek zana û ‘alim hebin; belê ew bi bîr û baweriyêt xwe, ne ji Selefiyane; çûnku ew bîd‘etçî bûn û gelek jî yêt heyn ew li dewrê Selefêt salih jî ne biyne, belê ew Selefîne, bo nimûne; Ehmedê kurê Henbel, Îshaqê kurê Rahuwey, Muhammedê kurê Îsma‘îlê Buxarî, Muslimê kurê Hecacê Quşeyrî û hemî xudanêt sunena, û ‘İbn Teymiyye, Muhammedê kurê ‘Ebdulwahabî û îmamê Bergewî û gelek û gelekêt dî jî (Xudê ji wan hemyan razî bît).

Vêca ka çewa bab û kalkalkêt te kok û ‘eslê tene; qet tu neşêy înkara wan bikey; çûnku tu digehye wan û ‘eyalê wa yî, ‘eynen herwesa ‘eqîda Selefêt salih jî kok û ‘eslê îman û baweriya te ye, qet tu neşêy înkar bikey.

Di dînê Îslamê da qet kesekê ew selahiyet nîne; ku ew rabît ‘eqîde; îman û baweriya dînê Îslamê bikete du qisim û bêjît: ‘Eqîda Selefa û ‘eqîda xelefa, her dîsa qet heqê kesekê nîne; navê Eş‘eriya yan yê Maturîdiya danîte ser ‘eqîda Selefêt salih û bîjît: ‘Eqîda ehlê sunnet û cima‘etê ji du qisma pêk têt: anku ‘eqîda Eş‘eriya û ‘eqîda Maturîdiya ne.

Yan jî ma heke êk rabît navê bab û kalkalkêt te biguhorît û xirab biket, ma tu dê ji ber wê hindê; çûnku wan navê bab û kalkalkêt te yêt guhorîn û xirab kirîn, “erê ma tu dê biye dujmin û neyarê bab û kalkalkêt xwe?

‘Eynen her wesa ma heke êk rabît navê dînê Îslamê yan wî navê di Qur’ana pîroz da hatî anku navê hîzbullah yan jî navê Selefêt salih danîte ser hîzb û cima‘eta xwe û ew li bin alayê wan navêt pîroz Xudê neket xirabî û qibheta biken, ma tu dişêy bibye dujmin û neyarê dînê Îslamê yan navê hîzbullah yan jî Selefêt xwe yêt salih; ‘eqîda wan qebûl nekey? Nexêr û sedcara jî nexêr.

Nê her wekî em hemî baş dizanîn me‘na Selefî behsê Pêxemberê Xudê Te‘ala Muhemmedî ye-selat û selam li ser bin- û heval û hogirêt wî û tabi‘î û etba‘êt tabi‘iya ne (Xudê ji wan hemyan razî bît).

Bi kurtî Selefî navê wan îmandara ye; ewêt ku di qernê Pêxemberî da-selat û selam li ser bin- û di wan her du qernêt di dûv wî ra ye. Ev e bi timamî herçar îmamêt mezhebêt fîqhî dikevine di wan her du qerna da; ewêt ku Pêxemberî -selat û selam li ser bin- behsê wan kirî û gotî: Qernê ji hemî qerna baştir qernê min e; anku ev ê ez tê da dijîm, paşê ew her du qernêt di dûv qernê min ra ne.

Rast e di meselêt fîqhî da xîlaf û îctîhad ya hey, belê di meselêt ‘eqîdê da qet‘iyen xîlaf û îctîhad nîne û ne durust e ; çûnku meselêt ‘eqîdê di tewqîfîne, teşbîh ne bît wekî yêt matematîkê ne; yan sede yan jî sifre.

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَمَاذَا بَعْدَ الْحَقِّ إِلَّا الضَّلاَلُ فَأَنَّى تُصْرَّفُونَ

“Erê ma piştî heqiyê ji delaletê pêvetir çu tiştê dî heye?! Vêca ma çewa hûn rûyê xwe ji heqiyê ba diden û diguhorin?!”[729]

Me‘na kelîme û gotina Selef di ezmanê ‘Erebî da; anku yê pêşiyê û berahîkê ye, Selefêt her qewim û miletekî ew in; ewêt ku li berahîka wan borîn û çûyin. Ev e her wekî Xudê Te‘ala di Qur’ana pîroz da dibêjît:

فَخَلَفَ مِن بَعدِهِم خَلفٌ أَضاعُوا الصَّلاةَ وَاتَّبَعُوا الشَّهَواتِ فَسَوفَ يَلقَونَ غَيًّا

“Vêca paşê piştî wan nivşekî we yî xirab yê rabî; wan nivêj hêla û berze kir û ew yê bi dûv hewa û hewesê xwe ketin, belê paşê ew hemî dê gehine ‘ezaba Cehnemê.”[730]

Ya fer e em aşkira bikeyin û bêjîn: Selefêt ummeta Îslamî jî ew îmandarin; ewêt ku di qernê Pêxemberî da-selat û selam li ser bin- û di wan her du qernêt piştî ‘esrê se‘adetê da jiyayîn anku ew in; ewêt ku Pêxemberê Xudê Te‘ala -selat û selam li ser bin- behsê wan kirî.

Pêxember-selat û selam li ser bin- dibêjît:

(Mirovêt ummeta min yêt ku ji hemî mirovan dibaştir û bi xêrtir ew in; ewêt ku li vî qernê min da dijîn, paşê

729 Sûreta Yûnus 32
730 Sûreta Meryem 59

mirovêt qernê di dûv wî ra ne û paşê mirovêt qernê di dûv wî ra ne).[731]

‘Aîşe (Xudê jê razî bît) dibêjît, zelamekî pirsyar ji Pêxemberî-selat û selam li ser bin- kir û gotê:

kîş mirov di baş û bi xêrtir in? Pêxemberî-selat û selam li ser bin- got: Yêt vî qernî yê ku ez tê da dijîm, paşê yêt qernê duwê Û paşê yêt qernê sê ne.[732]

Îmamê Xezalî (Xudê jê razî bît) di kitêba xwe da, ewa ku bi navê: (Îlcamul- ‘Ewam) da kelîma Selef te‘rîf diket û dibêjît: (Selefiyet mezhebê sihabî û tabi‘iya ne).

Vêca Selefî ew in; ewêt ku li ser rêka Pêxemberî -selat û selam li ser bin- û sihabiyêt wî û li dewsa tabi‘î û etba‘êt tabi‘iya; ewêt ku rêberêt hîdayetê ne bo ummetê, ew ew in; ewêt ku li wan hersê qerna jiyayîn; ewêt ku Pêxemberî-selat û selam li ser bin- behsê wan bi başî û qencî kirî di hedîsa xwe ya meşhur da, ew ew in; ewêt ku bi gotin û kar û ‘emelêt xwe li ser rêk û ‘eqîda Selefêt salih di berdewam heta roja qiyametê; ew ji kîş qewm û miletî jî bin qet çu ferq û cudahî nîne; ew hemî Selefîne.

Nê demê pirsyar ji Pêxemberî hatiye kirin; gelo firqa naciye kîjike û kîne! Wî got: Ew ew in: Ewêt ku diberdewam li ser wê rêkê; ewa ku ez û sihabiyêt min evroke li ser diberdewam.

Ewêt li ser rêk û rêbaza Selefêt salih diçin dibêjne wa: “ Selefî ” “ Ehlê Hedîsê ”,“ Ehlê Eserê ” “ Tayîfeya Mensore ” û “ Firqa Naciye ”.

Vêca ya fer e li ser me ku em baş bizanîn û fehim bikeyn; ‘eqîda dînê Îslamê hema her ew ‘eqîde ye ya ku bi rêka Selefêt salih gehiştiye me.

731 Buxarî
732 Muslim

Sufyanê Sewrî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Li demê bo te hate gotin yan jî tu pê heshayî; zelamekî ehlê hedîsê yê li roj hilatê û êk jî yê li roj ava (anku ewêt xelkê wan ciha), tu silava bo wan her duka birêke û du‘a bo wan her duka bike; çûnku Ehlê Sunnet û cima‘etê gelek dikêm in.[733]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَمَنْ جَاءَهُ مَوْعِظَةٌ مِنْ رَبِّهِ فَانْتَهَى فَلَهُ مَا سَلَفَ

“Vêca heçî kesê ji layê Rebbê wî ve şîretek bo bêt û ew desta ji riba û fayizê bikêşît, hîngê ya ku borî û çûyî, ew çu ew bo wî ye (çu gazinde ji wî kirin).”[734]

Herdîsa Xudê Te‘ala dibêjît:

فَجَعَلْنَاهُمْ سَلَفًا وَمَثَلًا لِّلْآخِرِينَ

“Vêca Me, ew kirne berahîk û ‘îbret û çaşinî bo wan qewma; ewêt ku di dûv wan ra radibin û tên.”[735]

Nê kelîme û gotina Selef di vê hedîsa ‘Aîşayê da jî (Xudê jê razî bît) ya hatî, ‘Aîşa dibêjît; Pêxemberî -selat û selam li ser bin- li demê nêzîkbîna mirna xwe gote kiça xwe Fatîmayê (Xudê jê razî bît): Ez dibinim ku ‘incela min ya hatî û ya hal bî, tu li roja qiyametê berî hemî ehlê mala min dê gehiye min, vêca ez xweş Selefim bo te anku berahîk.[736]

(( وَنِعْمَ السَّلَفُ أَنَا لَكِ))

Îmamê el-Ewza‘î -Xudê jê razî bît dibêjît: (Te êmanet, tu li ser rêk û dewsa Selefa yî berdewam û micid be, xwe heke mirov hemî te qebûl neken jî).[737]

733 El-Lalîkanî (Xudê jê razî bît)
734 Sûreta Beqere 274
735 Sûreta Zuxrûf 56
736 Buxarî û Muslim
737 Kitêba Eş-şerî‘e ya Acurî

‘Etayê kurê Ebî Rebahî -Xudê jê razî bît- di mesela xwarna goştê hespa da dibêjît: Selefa gelek carcar goştê hespa yê xwarî.[738]

Îmamê Zuhrî -Xudê jê razî bît- di derheqa hestiyêt heywanêt mirî da, wekî Fîlî û yêt ji bilî wî jî dibêjît:

Ez gehiştime geleka ji ‘alimêt Selefa, wan serê xwe bi şeyêt hestiyê heywana şedikir û dohnê di qafkêt hestiyêt heywana da wan di serê xwe dida, wan çu nebaşî ji vê hindê nedidît.

Kelamciyek dibêjît:

مَنْهَجُ السَّلَفِ أَسْلَمُ و مَنْهَجُ خَلَف أَعْلَمُ وَأَحْكَم

Anku rêk û rêbaza Selefa ya saxlemtire, belê rêk û rêbaza Xelefa bi zanînê ya mezbût û qaîmtire.

Ev gotina vî kelamcî gotî, Eş‘erî û Maturîdya he ji berê da heta evroke bo xwe ya kiriye ‘ala û ew bilind diken û her dibêjin.

Belê divêt, em baş bizanîn ser ragirtina mezhebê xelefa di ser mezhebê Selefa ra kafirî ye. Îbin Teymiyê Herranî (Xudê jê razî bît), carekê li demê ew berhingarî Kelamciya dibît û wan rediket, ew vê gotina wan ya xelet li nav serê wan didet û ew bi vî şiklî ras diket û dibêjît:

”مَنْهَجُ السَّلَفِ أَسْلَمُ وَأَعْلَمُ وَأَحْكَمُ“

Rêk û rêbaza Selefa ya saxlemtir e û bi ‘îlim û zanînê jî ya mezbût û qaîmtire.[739]

Eve me zanî ku ev rêk û rêbaza Selefa ya saxlemtir e û bi ‘îlim û zanînê jî ya mezbût û qaîmtir e ji hemî rêk

738 Mu‘cem Fîqhus-Selef
739 D. Salihê kurê Se‘dî

û rêbaza, çûnku rêk û rêbaza Selefêt salih, ji teref Xudê Te'ala û Pêxemberê Wî ve -selat û selam li ser bin- anku bi Qur'anê û sunnetê ya hatiye beyan kirin, belê 'Eqîde û bîr û baweriya Kelamciya 'asas û binişa wê ne li ser Qur'an û sunnetê ye.

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلَوْ كَانَ مِنْ عِنْدِ غَيْرِ اللَّهِ لَوَجَدُوا فِيهِ اخْتِلَافًا كَثِيرًا

"Nê heke ev Qur'ane ji def Ellahu Te'ala nehatiba (anku gotina êkî dî ba) ew da gelek tiştêt jêk cuda û nedirêk û pêk tê da bînin."[740]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمَا يَنطِقُ عَنِ ٱلْهَوَىٰ إِنْ هُوَ إِلاَّ وَحْيٌ يُوحَىٰ

"Qet wî ji def xwe çu tişt negotiye û nabêjît. Bê şik (ew Qur'ana ku ew bo hewe dixûnît), ew bo wî bi wehî ya têt û hatiye xwarê."[741]

740 Sûreta Nîsa 82
741 Sûreta Necm 3

# XÊRA WÎ ‘ÎBADETÊ YÊ KU BÌ DÌLÎ Û MEJÎ TÊTE KÌRÌN

Divêt, bizanîn; “Hindî gotin û kar û ‘emelêt bi aşkirahî û nepenî ve têne kirin; ewêt ku Xudayê Jorî hejê diket û pê yî razî ji wî kesî yê ku diket, eha kirna wan hemîya ‘îbadet û ta‘ete.”

Belê divêt, hemî rengêt ‘îbadet û ta‘etî hema her bes bo Xudayê Jorî bitinê bêne kirin. Ji bilî vê hindê jî divêt, hemî rengêt ‘îbadet û ta‘etî hema her bi wê usûlê, terz û şiklî bête kirin Ew ê ku Qur’an û Sunneta sehîh ferman û emir pê dayî û bo me rohn û beyan kirîn.

Çî ‘îbadetê hebît, heke ku ew wekî Qur’an û Sunnetê neête kirin ew ji xwe ye û yî bê fayde ye. Nê gava me got: “**Laîlahe îllallah**” ev e bo me aşkira diket û dibêjît: Ferz e ku hemî new‘êt ‘îbadetî hema her bes bo Xudayê Jorî bitinê bêne kirin û gava me di dûv ra got: “**Muhammedur-rasulullah**” ev e jî bo me aşkira û îsbat diket ku divêt, ka çewa Pêxemberî ‘îbadet kiriye, pêtivî û fer e li ser me, ku em jî ‘eynen hema her wesa ‘îbadetî bikeyn bê zêdehî û kêm kirin.

Xudê Te‘ala di şerî‘etê dînê Îslamê da, gelek new‘êt ‘îbadetî; ewêt ku jêk dicuda û bi gelek renga li ser ‘ebdêt xwe; anku li ser Busulmana yêt ferz û wacib kirîn, belê ew new‘êt ‘îbadetî hemî bi bedenê û malî û gotinêt aşkira naêne kirin, hindek ji wan ‘îbadeta; bi dilî û mejî têne kirin, ew dinepenîne, dibêjine wî new‘ê ‘îbadetî; ‘îbadetê bêdeng Ew ê ku bi kerrî ve têtе kirin, anku ‘îbadetê bi tefekur û hizirkirna mejî û dilî têtе kirin, ew jî eve ye; ku mirov çavêt xwe baş veket tefekur û hizra xwe di mexluqatêt Xudê Te‘ala da biket; da ku mirov baş bizanît û fehim biket ka meznahî û qudreta Xudê Te‘ala çende, ev ‘îbadete

hema bi dilî û mejî bitinê tête kirin, mirov vî new‘ê ‘îbadetî qet ne bi ezmanê xwe, nebi destêt xwe, ne bi pêt xwe û ne bi malê xwe naket, belê mirov dişêt vî new‘ê ‘îbadetî hema bi mejî û dilê xwe bitinê diket.

Xudê Te‘ala di Qur’ana Pîroz da gelek medhêt wan îmandaran diket; ewêt ku mejî û dilêt xwe bi vî new‘ê ‘îbadetî anku bi hizir û tefekura di mexluqatêt Wî da bi kartînin diket.

Çunku hizir û tefekura di mexluqatêt Xudê Te‘ala da û bi êk carî di qanûna ayetêt şer‘î û kewnî da, ewêt ku Xudê Te‘ala danadîn, mirov pê digehîte gupîtka zanînê û îmana kamil, vêca ev ‘îbadete anku hizir û tefekura bi mejî û dilî Ferz e li ser îmandaran ne sunete, çûnku Xudê Te‘ala di Qur’ana pîroz da li gelek cihan emir yê bi vî new‘ê ‘îbadetî kirî anku bi hizir û tefekura mejî û dilî di mexluqatêt Wî da. Xudê Te‘ala vî new‘ê ‘îbadetê; ev ê ku bi mejî û dilî tête kirin, nakete nesîbê her kesekê; çunku ev new‘ê ‘îbadetî yî bê riya û rûmetî ye.

Xudê Te‘ala medhêt wan îmandaran diket; ewêt bi mejî û dilêt xwe hizir û tefekurê diken di mexluqatêt Wî da û ev e Ew dibêjîtît:

إِنَّ فِي خَلْقِ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ وَاخْتِلَافِ اللَّيْلِ وَالنَّهَارِ لَآيَاتٍ لِأُولِي الْأَلْبَابِ الَّذِينَ يَذْكُرُونَ اللَّهَ قِيَامًا وَقُعُودًا وَعَلَى جُنُوبِهِمْ وَيَتَفَكَّرُونَ فِي خَلْقِ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ رَبَّنَا مَا خَلَقْتَ هَذَا بَاطِلًا سُبْحَانَكَ فَقِنَا عَذَابَ النَّارِ

“Bê şik di xuliqandin û çêkirna ‘esmanan û ‘erdî da û diguhorîn (û dihatin û çûna) şev û roja da gelek nîşan û ‘elamet yêt heyn (li ser heyîn û mezunahiya qudreta Ellahu Te‘ala) belê bo wan aqildara; ewêt xudan hiş û bîr;

wan îmandarêt rast û durust ew in; ewêt ku şipêrve û rûniştî û li ser teniştêt xwe her Ellahu Te'ala tîne bîra xwe û hizrêt xwe di xuliqandin û çêkirna 'esmanan û 'erdî da diken û dibêjin: "Ey Rebbê me! Te ev tişt e hemî jixwe çênekirîne, Tu ji hemî kêmasiyan yî pak û beriyî. Vêca em hûviyê ji Te dikeyn ku Tu me ji 'ezaba agirî biparêzî û sitare bikey."[742]

Çunku bi hizir û tefekura mejî û dilî di mexluqatêt Xudê Te'ala da, niyasîna Xudê Te'ala û heyîn û êkatiya Wî bi êqîn û baştir li pêşçavêt mirovî rohin û aşkira dibît û di mejiyê mirovî da xwe cih dibît û îmana mirovî pê zêde û kamil dibît, sehm û heybeta Xudê Te'ala pitir li dev mirovî peyda dibît û ji guneha û bê-emriya Wî pitir mirov diveciniqît û ji xewa xefletê hişyar dibît.

'Ebdullahê kurê îmamê 'Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît: (Hizir û tefekura se'etekê bedelî xêra 'îbadetê şevekê ye; ku mirov bi 'îbadetê îhya biket).[743]

Di kitêba Hulyetu-Ewliya da zar ebu Derda û di kitêba Zuhd da îmamê Ehmedê kurê Henbel zar Hesenê Besrî (Xudê ji wan hemyan razî bît) dibêjît (Hizir û tefekura se'etekê bedelî xêra 'îbadetê şevekê ye) ya hatî.

Şeyxulîslam Îbin Teymiyê Herranî (Rehma Xudê li ser bit) dibêjît: (Hizir û tefekura di mexluqatêt Xudê Te'ala yêt 'Ulwî û Suflî da emr yê pê hatiye dan; anku Xudê Te'ala yê gotî, da ku mirov bo xwe 'îbreta jê bigrin, nê bi başî berê me bi bal tefekurê ve yê hatiye lêdan.[744]

742 Sûreta Alî'îmra 191
743 Ji gotina 'Umeyîr kurê Zeydî yê Ensarî sihabiyekî nazdare (Xudê jê razî bît)
744 Mecmu'ul-Fetawa

Bişrê kurê Harisê Hafî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Heke mirov hizir û tefekura xwe di mezinahî û ‘ezemeta Xudê Te‘ala biken, qet ew çû caran bê-emriya Wî naken!![745]

Zanayê mezin Îmamê Se‘dî (Rehma Xudê li ser bit) dibêjît: (Hizir û tefekura di mexluqatêt Xudê Te‘ala da, ji sîfetêt weliyêt Xudê Te‘ala; yêt ‘arif û zana ye.

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلِ انْظُرُوا مَاذَا فِي السَّمَوَاتِ وَالْأَرْضِ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: “Dê hûn baş berê xwe bidenê ka çî di ‘esmanan da û di ‘erdîda heye ji ‘ecêbiya.”[746]

Xudê Te‘ala dibêjît:

أَوَلَمْ يَنْظُرُوا فِي مَلَكُوتِ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ وَمَا خَلَقَ اللَّهُ مِنْ شَيْءٍ

“Erê ma ew berê xwe na dene selabet û mezinahiya ‘esmanan û ‘erdî û wan tiştan jî; ewêt ku Xudê Te‘ala xulûqandîn û çêkirîn?!”[747]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلِ انظُرُوا مَاذَا فِي السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ وَمَا تُغْنِي الْآيَاتُ وَالنُّذُرُ عَن قَوْمٍ لَّا يُؤْمِنُونَ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: “Dê hûn berê xwe bidenê ka çî di ‘esmanan û ‘erdîda heye.” Erê, ma ayet û tirstêdan dê çî mefayî dene wan; ewêt ku îman û baweryê naînin!”[748]

745 Tefsîra îbn Kesîr
746 Sûreta Yunus 101
747 Sûreta E‘raf 185
748 Sûreta Yunûs 101
Sûreta En‘asm 75

Xudê Te'ala dibêjît:

وَكَذَلِكَ نُرِي إِبْرَاهِيمَ مَلَكُوتَ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ وَلِيَكُونَ مِنَ الْمُوقِنِينَ

"Eha her hosa Me 'ecêbiyêt 'esmanan û 'erdî nîşa Îbrahîmî pêxemberî dan; da ku ew bibîte ji wan îmandaran; ewêt ku ji dil û êqîn îman û baweriyê tînin."[749]

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنَّ فِي خَلْقِ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ وَاخْتِلَافِ اللَّيْلِ وَالنَّهَارِ وَالْفُلْكِ الَّتِي تَجْرِي فِي الْبَحْرِ بِمَا يَنفَعُ النَّاسَ وَمَا أَنزَلَ اللَّهُ مِنَ السَّمَاءِ مِن مَّاءٍ فَأَحْيَا بِهِ الْأَرْضَ بَعْدَ مَوْتِهَا وَبَثَّ فِيهَا مِن كُلِّ دَابَّةٍ وَتَصْرِيفِ الرِّيَاحِ وَالسَّحَابِ الْمُسَخَّرِ بَيْنَ السَّمَاءِ وَالْأَرْضِ لَآيَاتٍ لِّقَوْمٍ يَعْقِلُونَ

"Bê şik di xuliqandin û çêkirna 'esmanan û 'erdî da û diguhorîna şev û roja da, û dihatin û çûna wan gemiya da; ewêt ku li ser behrê mefa jê digehîte mirovan û ji wê avê jî ya ku Ellahu Te'ala ji 'esmanî dihinêrîte xwarê, pê 'erdê hişk piştî mirna wî sax û şîn dikete ve û di wan xudan ruha da ewêt ku Ellahu Te'ala belav kirîn li ser rûyê 'erdî, û di hatin û çûna bayî da û di wan 'ewrêt Wî misexer kirîn di navbeyna 'erdî û 'esmanî da jî gelek nîşan û 'elamet yêt heyn (li ser heyîn û mezinahiya qudreta Ellahu Te'ala) bo wan kesa; ewêt ku aqilê xwe didene şolî û tê digehin."[750]

749 Sûreta Alî 'Îmran 190
750 Sûreta Yûnus 6

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ فِي اخْتِلاَفِ اللَّيْلِ وَالنَّهَارِ وَمَا خَلَقَ اللَّهُ فِي السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ لَآيَاتٍ لِقَوْمٍ يَتَّقُونَ

“Bê şik diguhorîna şev û roja da (ku her duk bêrawestan bi taryatî û ronahiya xwe li dûvêk tên û diçin) û di wan tiştan jî da Ewêt ku Ellahu Te‘ala di (her heft) ‘esmanan da û di ‘erdî da xuliqandîn û çêkirîn gelek nîşan û ‘elamet yêt heyn (li ser heyîn û mezinahiya qudreta Ellahu Te‘ala) bo wan kesa; ewêt ku xwe ji bê-emriya Ellahu Te‘ala û ji ‘ezaba Wî diparêzin û Muhafize diken.”[751]

Ji ber vê çendê Pêxemberê Xudê Muhammedî-selat û selam li ser bin- ev ayeta jêrî xwand û paşê wî got: Weyil bo wî kesî bît yê ku vê ayetê bi xûnît û hizir û tefekura xwe tê da neket:

وَيَتَفَكَّرُونَ فِي خَلْقِ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ

“Û îmandar hema ew in; ewêt hizr û tefekura xwe di xuliqandin û çêkirna ‘esmanan û ‘erdî da diken.”[752]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَكَأَيِّن مِّنْ آيَةٍ فِي السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ يَمُرُّونَ عَلَيْهَا وَهُمْ عَنْهَا مُعْرِضُونَ

“Gelek nîşan û ‘elamet yêt di ‘esmanan da û ‘erdîda heyîn, belê ew hema di ber ra diborin û pişta xwe didenê (qet xwe tê nagehînin!).”[753]

751 Sûreta Yûnus 6
752 Sûreta Alî ‘Îmran 191
753 Sûreta Yusuf 105

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِنَّ كَثِيرًا مِنَ النَّاسِ عَنْ آيَاتِنَا لَغَافِلُونَ

“Bê şik geleka ji mirovan haj ayetêt me nîne û ew jê dixafilin!”[754]

Xudê Te‘ala dibêjît:

سَأَصْرِفُ عَنْ آيَاتِيَ الَّذِينَ يَتَكَبَّرُونَ فِي الْأَرْضِ بِغَيْرِ الْحَقِّ وَإِن يَرَوْا كُلَّ آيَةٍ لَّا يُؤْمِنُوا بِهَا

“Ez, dê hema berê wan ji ayetêt xwe guhorim; ewêt ku xwe li ser rûyê ‘erdî ji neheqî mezin diken, heke ew hemî ayeta jî bibînin ew îman û baweriyê pê naînin.”[755]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَقَدْ ذَرَأْنَا لِجَهَنَّمَ كَثِيرًا مِّنَ الْجِنِّ وَالإِنسِ لَهُمْ قُلُوبٌ لاَّ يَفْقَهُونَ بِهَا وَلَهُمْ أَعْيُنٌ لاَّ يُبْصِرُونَ بِهَا وَلَهُمْ آذَانٌ لاَّ يَسْمَعُونَ بِهَا أُوْلَئِكَ كَالأَنْعَامِ بَلْ هُمْ أَضَلُّ أُوْلَئِكَ هُمُ الْغَافِلُونَ

“Bi sûnd, Me gelek ji ecine û mirovan bo Cehnemê yêt xuliqandîn û amade kirîn; çûnku wan hinde dil yêt heyn; ew bi wan dila diheqiyê û rastiyê nagehin û wan hinde çav yêt heyn; ew bi wan çava heqiyê nabînin û wan hinde guh yêt heyn; wan bi wan guha, gul heqiyê û rastiyê nabît. Ew wekî heywana ne, heta ew hêj ji heywana jî di ebleh û şaştir in jî. Eha hema her ew in; yêt xafil (ewêt ku ji heqiyê didûr û bêbahir).”[756]

754 Sûreta Yûnus 92
755 Sûreta E‘raf 146
756 Sûreta E‘raf 179

## GELEK NEW‘ÊT ‘ÎBADETÎ YÊT HEYN

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَفِرُّوا إِلَى اللَّهِ ۖ إِنِّي لَكُم مِّنْهُ نَذِيرٌ مُّبِينٌ

“(Ey gelî mirovan!) Vêca hûn hema her (bi kirna ‘îbadet û ta‘etî…) birevine bi nik Ellahu Te‘ala ve. Bê şik ez ji layê Wî ve bo hewe hemyan hişyarker û tirstêderekî aşkira me.”[757]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَفِي ذَٰلِكَ فَلْيَتَنَافَسِ الْمُتَنَافِسُونَ

“Û vêca ew îmandarêt diber êkûdu ra diken, eha bila ew bo gehiştina van lezzet û xweşiyêt Biheştê (bi kirna ‘îbadetî, ta‘etî û xêr û sedeqa) di ber êkûdu ra biken.”[758]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لِمِثْلِ هَٰذَا فَلْيَعْمَلِ الْعَامِلُونَ

“Ew îmandarêt xebat û bizavê di vê dinyayê da diken; bila ew hema her bo serferaziya mezin; (anku bo riza Xudê Te ‘ala û çûna Biheştê) her xebat û bizavê biken.”[759]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَاسْتَبِقُوا الْخَيْرَاتِ

“Vêca ey gelî îmandaran hûn hema her bo xwe bi dana xêr û xêrata di ber êkûdu ra biken”.[760]

---

757 Sûreta Zariyat 50
Sûreta Mutefifîn 26
758 Sûreta Saffat 61
759 Sûreta Maîde 48
760 Sûreta Beqere 21

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا النَّاسُ اعْبُدُوا رَبَّكُمُ الَّذِي خَلَقَكُمْ وَالَّذِينَ مِن قَبْلِكُمْ لَعَلَّكُمْ تَتَّقُونَ

“(Ey gelî mirovan! Hûn hema her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo wî Rebbê xwe yê bitinê biken; da ku hûn bi vê hîndê xwe biparêzin ji bê-emriya Ellahu Te‘ala.”[761]

Xudê Te‘ala dibêjît:

أَلا لِلَّهِ الدِّينُ الْخَالِصُ

“Hûn xwe hişyar biken û baş bizanin Xudê Te‘ala hema wan kar û ‘emela bitinê qebûldiket; ewêt ku xalis û muxlisane bo Wî bitinê têne kirin.”[762]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا أُمِرُوا إِلاَّ لِيَعْبُدُوا اللَّهَ مُخْلِصِينَ لَهُ الدِّينَ

“Nê emrê wan hema her bi wê hindê dihate kirin, ku ew her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Ellahu Te‘ala bitinê biken (û ji dilekî safî xizmetê bo dînê Wî biken).”[763]

Vêca kelîme û gotina ‘îbadet naveke bo wan kar û ‘emel û gotinêt aşkira û nepenî; ewêt ku Ellahu Te‘ala bikrna wan yî razî û pê keyîf xweş dibît.

Eve her wekî em hemî dizanîn gelek new‘ û qisimêt ‘îbadetî yêt heyîn. Ew new‘ û qismêt ‘îbadetî; ewêt ku Ellahu Te‘ala emir pê dayî û li ser ummeta Muhemmedî -selat û selam li ser bin- ferz û wacib kirîn, divêt, ew new‘ û qismêt ‘îbadetî hemî hema her bi wî şiklî yê ku Wî li ser

761 Sûreta Zumer 3
762 Sûreta Beyyne 5
763 Mecmu‘ el-Lfetawa

‘ebdêt xwe yêt îmandar ferz û wacib kirîn, bê kêmkirin û zêde kirin bê riyakarî û bi xwe şikandin, bi viyan û hejêkirin hema her bo Ellahu Te‘ala bitinê bêne kirin.

Heçî kesê êkî ji van new‘êt ‘îbdetî ji bilî Ellahu Te‘ala bo êkî dî yan bo tiştekî dî biket; ew dê kevîte di nav şirka mezin da, û dê kafir bît û ji nav dînê Îslamê derkevît û xirhît.

Şeyxulîslam Ibin Teymiye yê Herranî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Hindîke gotina î‘badete; naveke bo wan tiştan hemyan ewêt ku Xudê Te‘ala divên; ewêt ku Ew pê ji ‘ebdêt xwe razî dibît; ji gotin û kirnêt bi aşkirahî û nepenî, ev e wekî xewf/tirsê, xeşyet/sehmê, tewekulê, kirna nivêjan, dana zikatê û girtina rojiyêt meha remezanê, ev e ji xeyrî wan jî; ji wan hukum û ehkamêt dînê Îslamê pê hatî.[764]

Hindîke î‘badete bi hemî new‘êt xwe ve ji çar qisima pêk têt ku ew jî eve ne:

1- Î‘badetê qelbî anku yê bi dilî û mejî tête kirin:

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمِنْ النَّاسِ مَنْ يَتَّخِذُ مِنْ دُونِ اللَّهِ أَنَدَاداً يُحِبُّونَهُمْ كَحُبِّ اللَّهِ وَالَّذِينَ آمَنُوا أَشَدُّ حُبّاً لِلَّهِ

“Hindek ji mirovan yêt heyn ew şirîk û hevkûfan bo Ellahu Te‘ala çêdiken û ew her wekî hej Ellahu Te‘ala diken, ew we hej wan şirîk û hevkûfan jî diken, ewêt ku ew bo Ellahu Te‘ala çêdiken. Belê, ewêt îman û bawerî înandî, ew hema her ji dil û pitir hej Ellahu Te‘ala bitinê diken.”[765]

764 Sûreta Beqere 165
Mecmu‘ul-Fetawa
Sûreta Ehzab 41-12

765 Sûreta Beqere 165

Şeyxulîslam Ibin Teymiye yê Herranî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Ew kesên ka çend hej Xudê Te'ala diket, ew hind hej mexlukekî biket ew kes muşrîke, vêca wacib e em ferqê bêxîne di navbeyana hejêkirna ji bo Xudê Te'ala û hejêkirna li gel Xudê Te'ala; ku heke mirov hej kesanekî yan tiştekê biket.[766]

2- Î'badetê qewlî anku yê bi ezmanî tête kirin:

Xudê Te'ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا اذْكُرُوا اللَّهَ ذِكْرًا كَثِيرًا وَسَبِّحُوهُ بُكْرَةً وَأَصِيلًا

"Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Hûn gelek navê Ellahu Te'ala bîne bîra xwe, (anku bila her navê Ellahu Te'ala li ser ezmanê hewe bît). Hûn sipêdehî û êvariya her medh û sena bo Ellahu Te'ala biken."[767] Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin- dibêjît:

Metela wî kesî yê ku zikrê Xudê Te'ala diket; behsê dînê Wî diket û Ew ê zikrê Xudê Te'ala neket; anku yê behsê dînê Wî neket hiştî metela mirovê sax û miriye.[768]

3- Î'badetê 'emelî; anku yê bi e'zayêt bedenê tête kirin:

Xudê Te'ala dibêjît:

وَأَقِيمُوا الصَّلَاةَ وَآتُوا الزَّكَاةَ وَأَطِيعُوا الرَّسُولَ لَعَلَّكُمْ تُرْحَمُونَ

"Ey gelî îmandaran! Hûn her bi rast î û durustî nivêjan biken û ji dil zekatê ji malê xwe biden û her bi hedîsêt Pêxemberî; yêt rast û durust 'emel biken da ku rehm bi hewe bête birin."[769]

---

766 Mecmu'ul-Fetawa
767 Sûreta Ehzab 41-12
768 Buxarî
769 Sûreta Nur 56

Eve wekî kirna nivêjan, çûna hecê û ‘umrê û ji bilî wan jî.

4-Î‘badetê malî; anku yê bi malî tête kirin:

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَا يَحْسَبَنَّ الَّذِينَ يَبْخَلُونَ بِمَا آتَاهُمُ اللَّهُ مِنْ فَضْلِهِ هُوَ خَيْرًا لَهُمْ بَلْ هُوَ شَرٌّ لَهُمْ

“Bila ewêt ku qelsî û çûrikatiyê diken di wî tiştî da yê ku Ellahu Te‘ala ji dan û kerema xwe daye wan, bila ew we hizir neken ku ew bo başiya wa ye, nexêr, we nîne; ew bo xîrabiya wa ye.”[770]

Eve wekî dana zikatê, qurbana, ser û nezra û xêr û sedeqa û yêt wekî wan jî.

Welhasil, her Xudê Te‘ala bitinê hejî û layiqî wê hindê ye; ku hemî new‘êt ‘îbadetî bê riyakarî; xalis û muxlîsane hema her bo Wî bitinê bêne kirin, ev e wekî; nivêjê, rojiyê, zikatê, hecê, qurban ser û nezira, du‘a: daxwaz û hîviya, îstî‘anê: xwastina harîkariyê, îstîxasê: hawarkirinê, xuşû‘ê: xweşkandinê, xewf: tirsê, tewekkulê, rexbetê: dil xwazî û hejêkrinê, rehbetê: xeşyet û sehimê, înabê: bi dilê li xwe zivirîn, îstî‘azê: xwe spartinê, tewbê: li xwe zivirîn û yêt wekî van tiştan jî…

Heçî kesê tiştekî ji van tiştan ji bilî Xudê Te‘ala bo êkî dî yan bo tiştekî dî biket yan jî ji êkî dî bixwazît; ew kes dê bîte muşrîk; çûnku ev e wî bi wê hindê şirîk bo Xudê Te‘ala çêkirin!

‘Eynen her wesa heçî kesê ji bilî Xudê Te‘ala û kelamê Wî; ku Qur’ana Pîroze û navêt Wî yêt cuwan û lawin bi

770 Sûreta Alî ‘Îmran 180

êkî dî yan bi tiştekî dî; ji dil sûnd bi xwet, yan yê ji bilî Xudê Te‘ala bi keyfa xwe, xwe bo êkî dî yan bo tiştekî dî biçemînît, yan yê para, xwarinê û tişt û mişta danîte ser qebir û gora û pêveket, û yan yê nivêjê linik qebir û gora biket û yan yê bi navê dînî bîda‘a çêket û biket bila ew kes ji îmana xwe bitirsin, heke ew ji kirna wan tiştan tobe neken, ew dê kevne nav tebk û davêt şirk û kafiriyê.

Bo nimûne evêt jêrî çend new‘ û qisimêt ‘îbadetîne; ewêt ku divêt, hema her bes bo Xudê Te‘ala bitinê bêne kirin.

# TEWESSÛL: XWASTİNA Bİ WASÎTEYEKÎ

Tewessûl; me‘na Tew essûlê di luxetê ‘Erebî da; xwe nêzîk kirin û nêzîk bînî ye. me‘na Tewessûlê di îstîlaha dînî da eve ye; ku mirov bi hinde tiştan û rêkêt durust; anku bi hindek gotin û ‘emela; şol û kara xwe nêzîkî Xudayê Jorî biket.”

Em hema bes bi rêka tewessûla durust bitinê dişêyin bo xwe du‘a û hîviya ji Xudayê Jorî bikeyn û bixwazîn, tewessûla durust; ew e ya ku bi rêka êkê ji van her sê noqta tête kirn:

1- Tu her bi nav û sîfetêt Xudê Te‘ala yêt cuwan û law bo xwe du‘a û hîviya ji Xudê Te‘ala bike, anku tu her li berahîka hemî du‘a û hûviyêt xwe, tu bi nav û sîfetêt Xudê Te‘ala gazî û hawar bike Xudê Te‘ala.

Belê lazime mirov bo xwe bi du‘a û hîviya daxwaza wî tiştî bi nav û sîfetêt Xudê Te‘ala yêt cuwan û law, bo xwe ji Xudê Te‘ala biket û bixwazît; ewêt ku ew navêt Wî bi ser wî tiştî ve; anku delaletê dikene ser û li gel wî tiştî dimutabiq; bo nûmîne, em di nav du‘ayêt xwe da dê bêjîn: Ya Hafîzu, ya Hefîzu, ya Setîru Tu me muhafize û sitare bike ji hemî bela û musîbeta, ya Reman tu rehmê bi me bibe, ya Tewwab tu toba me qebûl bike, ya Xefur Tu gunhêt min ‘efûy bikey, ya Qehhar Tu dujminêt dînê Îslamê bişkêne û qirbike, ye‘nî divêt, hosa bi serêk ve bin…

2- Tu her bi kirna kar û ‘emelêt xwe yêt qenc û baş hawar û gazî bike Xudayê Jorî; bo nûmîne em di nav du‘ayêt xwe da dê bêjîn: Ey Xuda ya Rebbî! Heke min filan ‘îbedet yan filan şol xalis û muxlîsan e bo Te kirbît, Tu vê du‘a min bo min qebûlbike, ev e wekî metela wan her sê kesa; ewêt ku di şikeftê asê bîn.

3- Tu her bi du‘akirna îmandarêt sax; ev e ku tu bêjiye: Mirovekî muteqî û dîndar, çî ew yî hazir bît li dev te yan jî tu bi telefonê bêjiyê; bira tu bi xêra xwe bo min û ‘eyalê min du‘a bike û tu di dûv du‘êt ra jî her bêje: Amîn.

Du new‘êt tewessulê yêt heyn; qismê êkê: Tewesula durust û caiz, ev e bi kurtî wekî:

1- Tewesûla bi nav û sifatêt Xudê Te‘ala.

2- Tewesûla bi kar û ‘emelêt qenc û baş.

3- Tewesûla bi du‘ayêt îmandaran.

Her wekî ku me berî nihe gotî û aşkira kirî.

Qism û new‘ê duwê yê Tewesûlê:

Tewesûla heram û ne durust e ; ev e wekî ku kesanek rabît du‘a û hîviya bo xwe ji Xudê Te‘ala bi heq û cahê Pêxemberî-selat û selam li ser bin- biket; anku bêjît: Ya Rebbî, ey Xudayê min! Tu bo xatra Pêxemberî û cahê wî yan Tu bo xatira filan şêxî û welî Tu vê du‘a min qebûl bike; şola min çêke ne durust e heram e.

Rast e Pêxember û welî di xudan cah û xatirin li nik Xudê Te‘ala, belê du‘a kirna bi vî şiklî warid nebiye; ya bêsened û delîle ne durust e.

Divêt, mirovêt îmandar li demê hûviyî û du‘a diken, ew kesekê û çu tiştan neêxne di navbeyna xwe û Xudê Te‘ala da; ne yêt mirî û ne jî yêt sax; ewêt ku ne dihazir xwe bila ew kî bin; Pêxember, welî, qenc û çak û şêx û mişayêx jî bin, ne durust e mirov wan bo xwe bikete wasît e di navbeyna xwe û Xudê Te‘ala da; bo qebûlbîna du‘a: hîvî û daxwaza, ev e Xudayê Jorî bi xwe ferman diket û dibêjît:

وَإِذَا سَأَلَكَ عِبَادِي عَنِّي فَإِنِّي قَرِيبٌ أُجِيبُ دَعْوَةَ الدَّاعِ إِذَا دَعَانِ فَلْيَسْتَجِيبُوا لِي وَلْيُؤْمِنُوا بِي لَعَلَّهُمْ يَرْشُدُونَ

“(Ey Muhemmed!) Demê ‘ebdêt Min pirsyara Min ji te kir, tu bêje wan bê şik Ez gelekî nêzîkî wa me, heçî kesê du‘a ji Min biket; ka ew çî ji Min bixwazît (û wî çî bivêt) Ez dê deme wî, vêca bila ew her cewaba gazya Min biden; her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Min bitinê biken û bila îman û baweriyê bi Min bînin da ku ew bi ser rêka heq û durust hilbin.”[771]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا اتَّقُوا اللَّهَ وَابْتَغُوا إِلَيْهِ الْوَسِيلَةَ وَجَاهِدُوا فِي سَبِيلِهِ لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَ

“Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Hûn ji Ellahu Te‘ala bitirsin; (bê-emriya Wî neken) û hûn her kar û ‘emelêt çak û baş di navbeyna xwe û Ellahu Te‘ala da bo xwe biken wesîle; da ku hûn pê nêzîkî Wî bibin; bo nimûne hûn cîhadê di rêka Wî da biken da ku hûn rûspî û serferaz bin.”[772]

Xudê Te‘ala dibêjît:

أُوْلَئِكَ الَّذِينَ يَدْعُونَ يَبْتَغُونَ إِلَى رَبِّهِمُ الْوَسِيلَةَ أَيُّهُمْ أَقْرَبُ وَيَرْجُونَ رَحْمَتَهُ وَيَخَافُونَ عَذَابَهُ إِنَّ عَذَابَ رَبِّكَ كَانَ مَحْذُورًا

“Vêca ewêt ew bo xwe du‘a jê diken (wekî pêxemberan, milyaketa, weliya, qencan û çaka, çî disax yan jî dimirî bin) herêkê ji wan bo xwe ‘emelêt çak û baş yêt kirîne wesîle di navbeyna xwe û Ellahu Te‘ala da ku

771 Sûreta Beqere 186
772 Sûreta Maîde 35

her êk ji wan pitir pê nêzîkî Wî bibît û ew her yê bo xwe daxwaza rehma Ellahu Te‘ala diken û her yê ji ‘ezaba Wî ditirsin. Bê şik ‘ezaba Rebbê te gelek ya dijwar e, fer e ku hemî ‘ebdêt Wî her ji Wî bitinê bitirsin."[773]

Îmamê ebu Henîfe (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Mekruhe bo wî kesî yê ku du‘a diket ew di nav du‘ayêt xwe da bêjît: Ya Rebbî, ey Xudayê min! Tu bo xatira filan kesê yan Tu bo xatira pêxemberê xwe, bo xatira mizgefta Ke‘bê û Meş‘erul-lheram key vê du‘a min qebûl bikey).[774]

Ev e her wekî xudanê kitêba (Durerul-Muxtar) jî neqil diket û dibêjît: Îmamê ebu Henîfe (Xudê jê razî bît) qebûlnaket ku li demê tu du‘a dikey êkî bikeye wasîte di navbeyna xwe û Xudê Te‘ala da, divêt, hema bêwasîte tu bo xwe du‘a her ji Xudê Te‘ala bitinê bikey.

‘Eynen ka çewa Îmamê ebu Henîfe (Xudê jê razî bît) wasîta qebûl naket di du‘a da, şêx ‘Ebdulqadir Geylanî jî (Xudê jê razî bît) di kitêba xwe (el-Xuniyê) da ew jî qebûl naket ku mirov li demê du‘a diket êkî bikete wasîte di navbeyna xwe û Xudê Te‘ala da, bo qebûlbîna du‘a.

773 Sûreta Îsra 57

774 Şerha ‘Eqîda Tehawî

## QURBAN: SER Û NEZİR

Qurban ser û nezir; ‘îbadet e, divêt, û lazime ev ‘îbadete hema her bo Xudê Te‘ala bitinê bêne dan û serjêkirin.

Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

قُلْ إِنَّ صَلَاتِي وَنُسُكِي وَمَحْيَايَ وَمَمَاتِي لِلَّهِ رَبِّ الْعَالَمِينَ

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: "Bê şik nivêjêt min û ta‘et û ‘îbadetê min û saxiya min û mirna min hemî bi carekê her bo Ellahu Te‘ala ne, ku Ew Rebbê hemî ‘alemê ye."[775]

Lazime ser û nezir hema her bes bo wî Xudayê bitinê bêne dan û serjêkirin; Ew ê ku çu tişt wekî Wi nîne û nabît, Ew ê ku yî bê şirîk û hempa ye.

Ew qurban; ser û nezrêt ji bilî navê Xudayê Jorî; li ser navê êkî dî û tiştekî dî têne serjêkin û dan; bo nimûne ev e wekî wan ser û nezra; ewêt ku li ser qebira, li nav goristana û minasiba; li ser gorêt weliya, şêx û mişayêxa û li ber pêt mezin û seroka têne serjêkirin xwarina goştê wan ser û nezra ya heram e; ew guneh ji hemî guneha mezintire; çunku ew xwdanê xwe dikêşîte nav şîrk û kafiriya mezin.

Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin- dibêjît:

" Xudayê Jorî le‘net ya li wî kesî kirî Ew ê ku ji bilî navê Xudayê Jorî tiştekî (anku ser û nezra) bo êkî dî û ser navê êkî dî serjê diket û didet."[776]

Belê durust e bo mêhvana, ‘erzû‘eyalî, daweta, keyfxweşiya sunet kirna bûçûka, xêr û sedeqe bo mirya û

---

775 Sureta En‘am 162

776 Sehîha Nesaî 4434

dev‘a bela ‘eyalî û malê mirov car û bara qurbana; ser û nezra serjêket û bidet, bi xêr li ser wê niyetê xwe belav biket anku bidete feqîr û jara di rê ka Xudê Te‘ala da xêreka gelek mezin e.

# DU´A; HÛVÎ

Du‘a; ‘îbadet e, divêt, û lazim e mirovê îmandar vî ‘îbadetî anku hemî new‘êt du‘a, hema her ji Xudê Te‘ala bitinê bi xwazît û daxwaz biket.

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- dibêjît: Du‘a ‘îbadet e.[777]

Derheqa vê hindê da Xudê Te‘ala dibêjît:

وَأَنَّ ٱلْمَسَٰجِدَ لِلَّهِ فَلَا تَدْعُواْ مَعَ ٱللَّهِ أَحَدًا

“Bê şik mizgeft malêt Ellahu Te‘ala ne. Vêca li demê hûn ‘îbadetî bo Ellahu Te‘ala diken, hûn li gel wî ‘îbadetî ‘‘îbadet û koletiyê” bo çu tiştan û kesekî dî tê da neken.”[778]

Xudayê Jorî di vê ayeta pîroz da bo me aşkira diket û dibêjît ku du‘a ‘îbadet e:

وَقَالَ رَبُّكُمُ ادْعُونِي أَسْتَجِبْ لَكُمْ ۚ إِنَّ الَّذِينَ يَسْتَكْبِرُونَ عَنْ عِبَادَتِي سَيَدْخُلُونَ جَهَنَّمَ دَاخِرِينَ

“(Ey gelî ‘ebda!) Rebbê hewe yê emir kirî û dibêjît: “Hûn hema her bo xwe hîvî û du‘a ji Min bitinê biken, Ez dê dihawara hewe êm û cewaba hewe dem. Bê şik ewêt ku ji xwe nagirin ‘îbadet û ta‘etî bo Min biken; ew hemî bi riswayî û rezîlî dê çine Cehnemê.”[779]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَمْ أَكُنْ بِدُعَائِكَ رَبِّ شَقِيًّا

777 Ebu Dawud, qismê Dua
778 Sûreta Cin 18
779 Sureta Mu’mîn; anku Xafir 60

“Ey Rebbê min! Nê Tu her du‘ayêt min bo min qebûl dikey; çû caran Te ez dest vala nezivirandîme (Qet çû caran ez ji Te bêhûvî nebîme û nabim ez dê hema her bo xwe hîvî û du‘a ji Te bitinê kem).”[780]

Nê heçî kesê jibilî Xudayê Jorî bo xwe ji hindekêt dî û hinde tişta du‘a biket ew bi wê hindê dibîte muşrîk û kafir dibît.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَا تَدْعُ مَعَ اللَّهِ إِلَٰهًا آخَرَ لَا إِلَٰهَ إِلَّا هُوَ

“Tu li gel Ellahu Te‘ala ‘îbadetî bo çu tiştan û ji çu xudayêt direw du‘a neke, nê ji Ellahu Te‘ala pêvetir qet çu xudayêt dî yêt heq nînin û nabin.”[781]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَنْ أَضَلُّ مِمَّنْ يَدْعُو مِنْ دُونِ اللَّهِ مَنْ لَا يَسْتَجِيبُ لَهُ إِلَىٰ يَوْمِ الْقِيَا مَةِ وَهُمْ عَنْ دُعَائِهِمْ غَافِلُونَ

“Ma kî ji wî yî xirhaytir e; Ew ê ku ji bilî Ellahu Te‘ala ‘îbadetî bo wan tiştan diket; ewêt ku heta roja qiyametê neşên cewaba wî biden? Ew pût ji wî ‘îbadetî yê ku ew bo diken ew ji wan dixafil û bêageh in.”[782]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَن يَدْعُ مَعَ اللَّهِ إِلَهًا آخَرَ لَا بُرْهَانَ لَهُ بِهِ فَإِنَّمَا حِسَابُهُ عِندَ رَبِّهِ إِنَّهُ لَا يُفْلِحُ الْكَافِرُونَ

780 Sûreta Meryem 4
781 Sûreta Qeses 88
782 Sûreta Ehqaf 5

“Heçî kesê li gel Ellahu Te‘ala ‘îbadetî bo xudayekî dî biket, qet bi wê hindê bo wî çu rêk û delîl nînin, cezayê wî yê li nik Rebbê wî. Bê şik yêt kafir qet çû caran serferaz û rûspî nabin.”[783]

Herdîsa Xudê Te‘ala ferman diket û dibêjît:

قُلْ مَا يَعْبَأُ بِكُمْ رَبِّي لَوْلَا دُعَاؤُكُمْ فَقَدْ كَذَّبْتُمْ فَسَوْفَ يَكُونُ لِزَامًا

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje wa: “Nê heke ji ber du‘a û ‘îbadetê hewe neba, ma çewa Rebbê min dê qedrê hewe girît û hewe birûmet êxît. (Ey gelî kafira!) Bê şik hûn yê Pêxemberî û Qur’anê direw hisab diken. Vêca (heke hûn îman û baweriyê ne înin) ‘ezab di dinya û axretê da bela xwe ji hewe venaket û qet hûn jê xilas nabin jî.”[784]

783 Sûreta Mu’mînun 117
784 Sûreta Furqan 77

## ÎSTÎ‘ANE; XWASTİNA HARÎKARİYÊ

Îstî‘ane û xwastina harîkariyê; ‘îbadet e, divêt, û lazim e, ev ‘îbadet e, anku îstî‘ane; xwastina harîkariyê hema her ji Xudê Te‘ala bitinê bête xwastin û daxwaz kirin.

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- dibêjît:

Li demê te viya tiştekî bixwazî tu hema her ji Xudê Te‘ala bitinê bixwaze û li demê te viya daxwaza harîkariyê bo xwe bikey tu hema her ji Xudê Te‘ala bitinê daxwaz bike.[785]

Ew harîkariya ku divêt, hema her ji Xudayê Jorî bitinê bête xwastin; ewa ku hema her heqê Wî bitinê ye, divêt, wê harîkariyê hema her ji Wî bitinê bixwazin û daxwaz biken. Heçî kesê vê harîkariyê ji bilî Xudayê Jorî ji êkî dî yan ji tiştekî bixwazît û daxwaz biket ew dê bîte muşrîk.

Eve wekî daxwazkirna ‘eyalî, şîfayê, rîzqî, bereketê û hidayetê û ew tiştêt wekî va, nê ev tişte hema bes ji Xudê Te‘ala bitinê têne xwastin û daxwazkirin, çunku yêt sax neşên van tiştan bo kesekê biken, pa vêca yêt mirî dê çewa şên biken, nê heke xwe agir berbîte mirya ew neşên ji xwe vemirînin.

Xudê Te‘ala dibêjît:

الَّذِي خَلَقَنِي فَهُوَ يَهْدِينِ وَالَّذِي هُوَ يُطْعِمُنِي وَيَسْقِينِ وَإِذَا مَرِضْتُ فَهُوَ يَشْفِينِ وَالَّذِي يُمِيتُنِي ثُمَّ يُحْيِينِ

“Her Ellahu Te‘ala ye, yê ku gava ez nisax bibim; Ew şîfayê dete min û min sax diket;” “Her Ellahu Te‘ala ye, yê ku min dimirînît û paşê her Ew dê min sax kete ve.”[786]

---

785 Tîrmîzî, Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Ev hedîs e ya Sehîhe
786 Sûreta Şu‘era 81

Em dişên vê hindê bi van nimûna bêjîn û aşkira bikeyn: Yê şîfayê, rizqî, bereketê, xêr û başiya û ‘eyalî ji bilî Xudayê Jorî ji miryekî, ji qebrekî yan jî ji çî tiştê heyî bixwazît û daxwaz biket ew dê bîte muşrîk, yan jî yê bi du‘a tiştekî ji êkî sax belê ew ji wî yî dûr bît, bixwazît û daxwaz biket ev e ew jî bû muşrîk.

Nê Qur’ana Pîroz ev hinde bo me ya rohin û aşkira kirî. Ma rojê em çend cara bidevê xwe di nivêja da xwe da dibêjîn:

إِيَّاكَ نَعْبُدُ وَإِيَّاكَ نَسْتَعِينُ

“Em hema her ji dil ‘îbadet û ta‘etî bo Te bitinê dikeyn û her harîkariyê ji Te bitinê dixwazîn û daxwaz dikeyn (ey Rebbê hemî ‘alema!).”[787]

Belê ew mirovê ku mirov hindî şiyana wî û pêvehatina wî harîkariyê jê bixwazît û daxwaz biket, Ew ê ku yî sax û yî nêzîkî mirovî yan jî bi telefonê daxwaza vê harîkariya hosa bi şirî‘et ya durust e û bêgazinde ye.

Bo nimûna wekî nihe ez harîkariyê ji hevalê xwe yê hazir; Ew ê ku li dev min bixwazim da ku ew harî min kitêbêt min hilgirît yan da hari min barê min barket.

Belê heke ew mirovê mirov harîkariyê jê dixwazît û daxwaz diket yî mirî bît yan jî yî sax bît, belê ne li dev mirovî bît; yî dûr bît, hîngê ew şîrk e û heke ew mirov li dev mirovî jî bît, mirov tiştekî yê ku ji şiyan û pêvehatina wî mirovî yî derketî bît; ev e wekî ‘eyalî, rizqî şîfayê û bereketê jê bixwazît û daxwaz biket ew jî şîrk e.

787 Tîrmîzî, Elbanî (Xudê ji wan her dukan razî bît) ew dibêjin: Ev hedîs e ya Sehîhe

Nê sihabîyêt Pêxemberî-selat û selam li ser bindi saxîya wî da ji wî daxwaz dikir ku ew bo wan dû‘a ji XudêTe‘ala biket.

Belê piştî wefata wî, qet çu tiştêt wesan çênebiye! Ye‘nî wan li ber qebrê wî çû caran du‘a ji wî nekirîne, çunku li dev qebra mirov bo xwe du‘a biket ne ya durust e, lazime mirov li nik seredana qebra du‘a bo wan mirya biket. Belê, yê bawer biket û bêjît: fayde yan zerer ji mirya dê gehîte me, bila ew ji îmana xwe bitirsît.

## ÎSTÎXASE; HAWARKİRİN

Îstîxase û hawarkirin ‘îbadete, divêt, di tengaviya da; li nik hilketina bela û musîbeta mirovê îmandar hema her hawar bikete Xudê Te‘ala bitinê, gelek ayet û hedîsêt Pêxemberî li ser rohinkirna vê hindê yêt hatîn.

Belê sed‘eyif û mixabinî gelek kes li nik tengavi û bela û musîbeta hawar dikene minasib, mirya, ewliya û şêx û mişayêxa û wan; ewêt ku ne dihazir, heta ew dibêjin: Ew di pê agehin; hîmet û bereketêt wan dihazirin û ew di hawara mirovan tên û wan ji tengaviya; ji bela û musîbeta xilas diken!

Belê pa Xudê Te‘ala dibêjît:

أَمَّن يُجِيبُ ٱلْمُضْطَرَّ إِذَا دَعَاهُ وَيَكْشِفُ ٱلسُّوٓءَ

“(Erê ma ew pût û senem çêtir in) yan jî Ew Xuda, yê ku dihawara wî kesî têt yê ku hawara xwe dibetê û Ew wê tengavî û ne xweşiyê li ser wan radiket.”[788]

Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

إِذْ تَسْتَغِيثُونَ رَبَّكُمْ فَاسْتَجَابَ لَكُمْ أَنِّي مُمِدُّكُمْ بِأَلْفٍ مِنَ الْمَلَائِكَةِ مُرْدِفِينَ

“(Ey gelî îmandaran!) Hûn wê çakî û qenciyê bîne bîra xwe; li demê (li şerê Bedrê) hewe bi hawar û gazî daxwaza harîkariyê ji Rebbê xwe dikir û Wî jî cewaba hewe dayî û gotî: “Bê şik Ez dê harîkariya hewe kem bi hizar milyaketa û Ez dê wan li dûvêk hinêrime xwarê.”[789]

788 Sûreta Neml 62
789 Sûreta Enfal 9

## XUŞÛ‘: XWEŞKANDİN

Xuşû‘: Xweşkandin; ‘îbadet e, divêt, û lazim e, mirov hema her xwe bo Xudê Te‘ala bitinê bi xuşû‘ û tederu‘ bişkênît.

Xweşkandin û xuşu‘, ew e ku mirov her xudayê xwe; anku Xudê Te‘ala bi qedir girtineka mezin ragirît, her ji heybet û mezinahiya Wî bitirsît; bê-emriya Wî neket û her guhê xwe bidete Wî û bo Wî biçîte ruku‘ û sucda.

Xudê Te‘ala bo me behsê Pêxemberêt xwe diket- Selewat û silavêt Xudê li ser wan bin- û dibêjît:

إِنَّهُمْ كَانُوا يُسَارِعُونَ فِي الْخَيْرَاتِ وَيَدْعُونَنَا رَغَباً وَرَهَباً وَكَانُوا لَنَا خَاشِعِينَ

“Bê şik wan bo kirna kar û barêt baş her di ber êkûdu ra dikir û wan bi hîvî û umêda xweşiyêt Biheştê û ji tirsa ‘ezabê her bo xwe du‘a ji Me dikirin û wan ji dil (û bitirs) her xwe bo mezinahiya Me dişkand (û emrê Me bi cih tîna).”[790]

Herdîsa Xudê Te‘ala dibêjît:

أَلَمْ يَأْنِ لِلَّذِينَ آمَنُوا أَن تَخْشَعَ قُلُوبُهُمْ لِذِكْرِ اللَّهِ وَمَا نَزَلَ مِنَ الْحَقِّ

“Erê ma bo wan; ewêt ku îman û bawerî înandî qewl û dem nehatiye ku bi bîr înandina navê Ellahu Te‘ala û bi vê Qur’anê ya ku Wî bi rêka wehyê hinartiye xwarê dilêt wan tijî xuşu‘ û tirsin bibît?”[791]

---

790 Sûreta Enbiya 90
791 Sûreta Hedîd 16

Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

قَدْ أَفْلَحَ الْمُؤْمِنُونَ الَّذِينَ هُمْ فِي صَلَاتِهِمْ خَاشِعُونَ

“Bê şik ew îmandar serferaz û rûspî bin; Ew ê ku di nivêjêt xwe da bitirs xwe bo Ellahu Te‘ala dişkênin.”[792]

Huzeyfê kurê Yemanî (Xudê jêrazî bît) dibêjît:

Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: (Tiştê jirêve hûn ji dînê xwe berze diken xuşû’e, û tiştê li dûmahîkê jî hûn ji dînê xwe berze diken nivêj e).[793]

‘Emmarê kurê Yasir (Xudê jêrazî bît) dibêjît, Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: Zelamek dê ji wê nivêja wî kirî silav vedet, qet çu xêr ji wê nivêja wî kirî nagehîte wî; îleh ji dehan êk, ji nehan êk ji heştan êk ji hefta êk ji şeşan êk ji pêncan êk ji çaran êk ji siyan yan jî hema nîveka xêra wê nivêjê ya ku wî kirî bitinê dê gehîte wî, (eve çûnku ew nivêja wî kirî ya bêxweşkandin û xuşu‘e bo Xudê Te‘ala; ji ber wê hindê ew bi timamî xêrê ji wê nivêja xwe nabîneît!).[794]

‘Abdullahê kurê ‘Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît: (Xuşu‘ di nivêjê da eve ye; (ku li demê tu nivêja xwe bi cima‘et bikey tu nezanî ka ewêt li rexê te yê rast ê û li rexê te yê çepê sekinîn kîne)

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- dibêjît

: (Tiştê ji rêve ji nav vê ummetê radibît xweşkandin û xuşu‘e, heta tu çend li nav wan bigerhî, tu êkî bitinê jî anku êkî ku ew yî şikestî û xaşi‘ bît nabînî).[795]

792 Sûreta Mû’mînun 2

793 Hakimî di mstedrika xwe da yê gotî sehîhe û îmamê Zehebî jî wekî yê gotî sehîhe

794 Zanayê mezin Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya Hesen e

795 Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Ev hedîs e ya Sehîh e

Huzeyfê kurê Yemanî (Xudê jê razî bît) dibêjît:

(Hûn xwe ji xuşû'a bi munafiqî dûr bêxin." Hindeka gotê: Xuşû'a bi nîfaq çi ye û ya çewa ne? Wî got: Xuşû'a bi nîfaqî ya sexte ew e; ku tu kelexê êkî bi xuşû' bibînî belê dilê wî çu xuşû' tê da nebît.)[796]

796 Medarîku-salikîn ya îbnu- lqeyim

## RİCA: HÛVÎ

Rica û hîvî kirin; ‘îbadet e, divêt, û lazim e, mirovê îmandar vî ‘îbadetî anku rica, hîvî û umêdêt xwe hema her bi Xudê Te‘ala bitinê ve girê bidet.

Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

فَمَنْ كَانَ يَرْجُو لِقَاءَ رَبِّهِ فَلْيَعْمَلْ عَمَلًا صَالِحًا وَلَا يُشْرِكْ بِعِبَادَةِ رَبِّهِ أَحَدًا

“Vêca heçî kesê bi hîvî û umêd bît; bo çûna huzûra Rebbê xwe, bila ew kar û ‘emelêt baş biket û bila ew kesekê nekete şirîk di ‘îbadetê Rebbê xwe da demê ku ew bo Wî diket.”[797]

Xudê Te‘ala behsê Îbrahîm Pêxemberî (silavêt Xudê Te‘ala li serbin) diket û dibêjît:

وَالَّذِي أَطْمَعُ أَنْ يَغْفِرَ لِي خَطِيئَتِي يَوْمَ الدِّينِ

“Her Ellahu Te‘ala ye, yê ku min hîvî û bawerî pê ya hey; ku Ew li roja kêşan û pîvana kar û ‘emela, dê bo min gunehêt min ‘efû ket.”[798]

Dayîka me ‘Aîşe kabaniya Pêxemberî (Xudê Te‘ala jê razî bît) dibêjît min gote, Pêxemberî-selat û selam li ser bin-: Ya qasidê Xudê; ev ayeta dibêjît:

وَالَّذِينَ يُؤْتُونَ مَا آتَوْا وَقُلُوبُهُمْ وَجِلَةٌ

“Û ew îmandarêt ji wî malî yê ku Ellahu Te‘ala daye wan ji dil xêr û sedeqa jê diden û her dilêt wan bi tirs û sehm; bê şik ew dê bi serferazî vegerhine nik Rebbê xwe.”[799]

---

797 Sureta Kehf 110
798 Sûreta Şu‘era 82
799 Sûreta Mu’mînûn 80

Erê ma ev ayete behsê wî kesî diket yê ku zînayê diket, dizya diket û ‘ereqê vedxwet?

Pêxemberî-selat û selam li ser bin-: gotê: Nexêr, ya kiça Ebubekrî yan jî ya kiça Sidîqî, ew ne behsê wa ye, ew behsê wî zelamî ye; ew ê ku rojiya digirît, xêra didet û nivêjan diket, belê ew ditirsît ka Xudê Te‘ala dê ji wî wergirît û qebûlket an ne.[800]

800 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya sehîhe

# XEWF: TİRS

Xewf û tirs ‘îbadet e, divêt, û lazim e, mirovê îmandar bi vî ‘îbadetî anku bi tirsa derunî hema her ji Xudê Te‘ala bitinê bitirsît û xewfê ji Wî bitinê biket.

Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

فَلَا تَخْشَوْهُمْ وَاخْشَوْنِي وَلِأُتِمَّ نِعْمَتِي عَلَيْكُمْ وَلَعَلَّكُمْ تَهْتَدُونَ

“Qet hûn ji wan netirsin, hûn hema her ji Min bitinê bitirsin, da ku Ez kerem û danêt xwe li ser hewe temam bikem; da ku hûn bi ser rêka heq û rast hilbin.”[801]

Xewf û tirs sê qisme û new‘e:

1- Xewf û tirsa normal û tebî‘î, ev xewf û tirse ew e; ewa ku ji tebî‘etê mirova ye; ev e her wekî xewf û tirsa mirovî ji neyar û durûndeha ji mara yan jî ji nexweşî û zererekê, ev new‘ê xewf û tirsa hosa ya durust e; Çunku Xudê Te‘ala behsê Musa Pêxemberî (silavêt Xudê Te‘ala li ser bin) diket û dibêjît:

فَخَرَجَ مِنْهَا خَائِفًا يَتَرَقَّبُ

“Vêca Mûsa bitirs û xewf; anku ew bi hişyarî ji nav bajêrî derket.”[802]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَأَوْجَسَ فِي نَفْسِهِ خِيفَةً مُوسى

“Vêca Mûsa ji ber wê hindê di dilê xwe da gelek ditirsa. ”[803]

801 Sûreta Beqere 150
802 Sûreta Qeses 21
803 Sûreta Ta ha 67

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلَهُمْ عَلَيَّ ذَنبٌ فَأَخَافُ أَن يَقْتُلُونِ

"Çûnkî xûna zelamekî ji qewmê Fir'ewnî ya li ser min hey, ez ditirsim ku ew ji ber wê hindê min bikujin."[804]

2- Xewf û tirsa Î'tîqadî; nepenî, hinde 'alim û zana dibêjine vê xewf û tirs hosa: Xewf û tirsa 'îbadetî, çunku ev new'ê xewf û tirsê ew e; ya ku hinde mirov xwe pê nêzîkî wî diken û pê 'îbadetî bo wî diken yê ku ew jê ditirsin, ew wî bi aşkirahî û nepenî nêzîkî xwe dizanin, ji berhindê dibêjine vê xewf û tirsa nepenî; xewf û tirsa Î'tîqadî anku yê bi nepenî ji êkî bitirsît, ew bi aşkirahî hêj pitir dê ji wî tirsît.

Ji ber hindê divêt, ev qisim û new'ê xewf û tirsê hosa hema her ji Xudê Te'ala bitinê bît, nê yê bi vê xewf û tirsa hosa anku ya Î'tîqadî ji bilî Xudê Te'ala ji êkî dî bitirsît ew dê kevîte nav şîrka mezin.

Ev e her wekî êk bi vê tirsa hosa ji tiştekî, ji mirya, ji weliya, ji şêxa, ji qebra û ji êkî dûr bitirsît ku ew dê zererekê gehînîtê wî, yan yê ji senemekî yan ji xudanê qebrekî bitirsît û bêjît; cidê wî dê li min det yan bêjît bêhna vî şêxê yan jî ya vî mişayêxî û minasibî geleka tenge; anku ew zûy bi xelkê veddet, ev e şîrk e.

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنَّمَا ذَٰلِكُمُ الشَّيْطَانُ يُخَوِّفُ أَوْلِيَاءَهُ فَلَا تَخَافُوهُمْ وَخَافُونِ إِن كُنتُم مُّؤْمِنِينَ

"Bê şik (Ew ê di şerî da digot ji dujminî bitirsin) ew şeytan bû, wî hema hevalbend û dostêt xwe bitinê ditirsandin,

804 Sûreta Şu'era 14

vêca hûn qet ji wan netirsin, hûn hema her ji Min bitinê bitirsin; (bê-emriya Min neken) heke rast e ku hûn dixudan îman û bawerî ne."[805]

Xudê Te'ala behsê Hud Pêxemberî (silavêt Xudê Te'ala li ser bin) diket, li demê qewmê wî gotiyê:

إِن نَّقُولُ إِلاَّ اعْتَرَاكَ بَعْضُ آلِهَتِنَا بِسُوَءٍ

"Ya em bi xwe dibêjîn, hema: "Hinde xudayêt me xirab û kirêt tu yê hingavtî (anku pûtêt me tu yê dîn kirî)."[806]

Xudê Te'ala dibêjît:

أَلَيْسَ اللَّهُ بِكَافٍ عَبْدَهُ وَيُخَوِّفُونَكَ بِالَّذِينَ مِن دُونِهِ

"Erê ma (li hemberî hîle û pîlanêt muşrîkan) Ellahu Te'ala nebesî 'ebdê xwe ye? (Ey Muhemmed!) Ew kafir ji bilî Ellahu Te'ala, yê te bi pût û senemêt xwe ditirsînin!"[807]

3- Xewf û tirsa dibîte mani' bo kirna ta'et û 'îbadetekî yan jî ya berê mirovî didete kirna gunehekê: Ev xewf û tirsa hosa mirovî nagehînîte hedê şirkê, belê ev xewf û tirsa hosa guneheka gelek girane xudanê wê dê pê ête cizadan, ev e her wekî wî kesê ji ber xewf û tirsê terka çûna cîhadê biket, yan yê ji ber xewf û tirsê terka daxwaza 'îlm û zanînê biket yan jî yê ji ber xewf û tirsê terka emrê bi kirna qenciya û nehya ji kirna xirabiya biket, yan jî yê ji tirsa hindeka da guneha û bê-emriya Xudê Te'ala biket, bila ew kes ji îmana xwe baş bitirsît.

805 Sûreta Alî 'Îmran 175
806 Sûreta Hud 54
807 Sûreta Zumer 36

# TEWEKKUL

Tewekkul; ‘îbadet e, divêt, û lazim e, mirovê îmandar hema her tewekkula xwe bidete bal Xudê Te‘ala bitinê ve; her pişta xwe bi Wî bitinê germ û qaîm biket.

Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

فَتَوَكَّلُوا إِن كُنتُم مُّؤْمِنِينَ

“Vêca hûn pişta xwe bi Ellahu Te‘ala qayim biken, heke rast e ku hûn dixudan îman û bawerî ne.”[808]

Herdîsa Xudê Te‘ala di ayeteka dî da jî ferman diket û dibêjît:

ومَن يَتَوَكَّلْ عَلَى اللَّهِ فَهُوَ حَسْبُهُ إِنَّ اللَّهَ بَالِغُ أَمْرِهِ

“Heçî kesê pişta xwe bi Ellahu Te‘ala qayim û germ biket

Ellahu Te‘ala besî wî ye. Bê şik Ellahu Te‘ala, her dê emrê xwe bi cih înît.”[809]

808 Sûreta Maîde 23
809 Sûreta Telaq 3

# REXBET: DİL XWAZÎ Û HEZKİRİN

Rexbet: Dil xwazî û hezkirin; ‘îbadet e, divêt, û lazim e, mirovê îmandar hema her bi rexbet, dil xwazî û hezkirina xwe berê xwe bi umêd û rica bidete bal Xudê Te‘ala bitinê ve. Vêca yê bo qetandina muhtaciyêt xwe, dilê xwe bi weliya, qencan, ecina, şêx û mişayêxa, qebra, dara û bera ve girêbidet, ew kes bê îman dibît û dibîte muşrîk.

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّا إِلَى رَبِّنَا رَاغِبُونَ

“Bê şik bi rexbet û hîvî her çavê me her yê li kerema Rebbê me bitinê.”[810]

Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

وَإِلَىٰ رَبِّكَ فَارْغَبْ

“Û bila hema her daxwaza te ya mezin her bal Rebbê te bi tinê bît.”[811]

Beraê kurê ‘Azib (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberî -selat û selam li ser bin-yê gotî: Wextê te viya binvî, tu destnivêja xwe, wesa bigre her wekî ku tu bo nivêjê digirî, paşê here di nav cihê xwe da û bikeve ser tenişta xwe ya rast ê, û paşê tu vê du‘ayê bixûne û bêje: “Ey Xudayê mîn!:

Eve ez birûyê xwe ve teslîmî te bîm, min şol û karêt xwe hemî hewaley Te kirîn, ez ji Te yî piştrast im û her ji Te ditirsim, qet ji Te pêvetir kesî dî neşêt min biparêzît û ji

---

810 Sûreta Qelem 32
811 Sûreta Înşirah 8

‘ezaba Te sitare biket, xilasbîniya min hema her bi Te ye, min îman û bawerî ya bi wê kitêbê înandî; ewa ku Te nazil kirî û bi wî Pêxemberî jî Ew ê ku Te hinartî.”[812]

812 Mûtefequn ‘eleyhî

# REHBET: SEHİM

Rehbet û sehim ‘îbadet e, divêt, û lazim e, mirovê îmandar hema her ji ber heybeta û mezinahiya Xudê Te‘ala bitinê yî bi rehbet; sehim û wehim bît; anku yî bi xewf û tirs bît.

Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

إِنَّهُمْ كَانُوا يُسَارِعُونَ فِي الْخَيْرَاتِ وَيَدْعُونَنَا رَغَبًا وَرَهَبًا وَكَانُوا لَنَا خَاشِعِينَ

“Bê şik wan bo kirna karûbarêt baş her di ber êkûdura dikir û wan bihûvî û umêda xweşiyêt Biheştê û ji tirsa ‘ezabê her bo xwe du‘a ji Me dikirin û wan ji dil (û bitirs) her xwe bo mezinahiya Me dişkand (û emrê Me bi cih tîna).”[813]

813 Sûreta Enbiya 90

# ÎNABE: ZİVİRÎN

Înabe û zivirîn ‘îbadet e, divêt, mirovê îmandar li xwe bizivirît her ji guneha û bê-emriya Xudê Te‘ala birevêt, bi tobe kirin berê xwe bidete binik Xudê Te‘ala ve.

Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

وَأَنِيبُوا إِلَىٰ رَبِّكُمْ وَأَسْلِمُوا لَهُ مِن قَبْلِ أَن يَأْتِيَكُمُ الْعَذَابُ ثُمَّ لَا تُنصَرُونَ

“(Ey gelî mirovan!) Hûn bizivirine bi nik Rebbê xwe ve û ji dil bal Wî ve tobe biken û teslîmî emrê Wî bibin hêj ‘ezab bi ser hewe da nehatî. Nê paşê qet çu harîkariya hewe naête kirin.”[814]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَالَّذِينَ إِذَا فَعَلُواْ فَاحِشَةً أَوْ ظَلَمُواْ أَنْفُسَهُمْ ذَكَرُواْ اللّهَ فَاسْتَغْفَرُواْ لِذُنُوبِهِمْ وَمَن يَغْفِرُ الذُّنُوبَ إِلاَّ اللّهُ وَلَمْ يُصِرُّواْ عَلَى مَا فَعَلُواْ وَهُمْ يَعْلَمُونَ

“Ewêt ku gava karêt qebîh û qibhetekê diken yan jî zilmê li ruha xwe diken, ew herhadirî Ellahu Te‘ala tîne bîra xwe û daxwaza lêborîn û ‘efûkirna guneha bo xwe ji Ellahu Te‘ala diken. Ma ji Ellahu Te‘ala pêvetir, qet kesekî dî yî we heye ku guneha bi xefrînît û ‘efû biket? Ew bizanîn jî xwe şirnaken li ser wan guneha; ewêt ku wan kirîn û diken û ew baş dizanin (xwe şirkirin li ser guneha tehlîkeyeka gelek mezin e bo îmana wa).”[815]

814 Sureta Zumer 54
815 Sûreta Alî ‘Îmran 135-136

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Ez bi wî Xudayî sûnd dixwem; Ew ê ku nefsa min (ruha min) didestê Wî da, nê heke hewe guneh nekirbane; Xudê Te'ala da hewe bet û Ew da qewmekî dî înîte şûna hewe; ku wan guneh kirbane û Ew da bo wan gunehêt wan xefirînît û da wan 'efûket).[816]

Enesê kurê Malikî (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberê Xudê Te'ala -selat û selam li ser bin- yê gotî:

(Zuriyeta benî Ademî hemî di gunehkarin, belê ewêt ji wan gunehkara hemyan di baştir ew ew in; ewêt ku her tobe diken û li xwe dizivirin).[817]

816 Muslim

817 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya hesen e

## ÎSTÎ‘AZE: XWE SPARTİN

Îstî‘aze û xwe spartin ‘îbadet e, divêt, mirovê îmandar hema her xwe bispêrîte Xudê Te‘ala bitinê û xwe bi Wî ve biparêzît û sitare biket ji hemî guneh, şer û xirabiyan .

Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

قُلْ أَعُوذُ بِرَبِّ النَّاسِ

“(Ey Muhemmed!) Tu bibêje: Ez xwe bi Rebbê hemî mirovan diparêzim û sitare dikem.”[818]

---

818 Sûreta Nas 1

# TEWBEKİRİN: Lİ XWEZİVİRÎN

Xudê Te‘ala dibêjît:

يُرِيدُ اللهُ لِيُبَيِّنَ لَكُمْ وَيَهْدِيَكُمْ سُنَنَ الَّذِينَ مِن قَبْلِكُمْ وَيَتُوبَ عَلَيْكُمْ وَاللهُ عَلِيمٌ حَكِيمٌ

“Ellahu Te‘ala divêt, (hukum û ehkamêt dînê xwe) bo hewe rohn û aşkira biket û berê hewe bidete ser rêk û rêbaza wan (pêxemberan); ewêt ku berî hewe hatîn û çûyîn û her dîsa Wî divêt, toba hewe wergirît û qebûl biket. Ellahu Te‘ala yî zana ye û yî xudan hîkmet e (di hemî kar û kirin û gotinêt xwe da).”[819]

Tewbe kirin: Li xwe zivirîn ‘îbadet e, divêt, û lazim e, ev ‘îbadet e; anku tobe hema her bo Xudê Te‘ala bitinê bît û mirov li ser destê Wî bitinê tobe biket.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَهُوَ الَّذِي يَقْبَلُ التَّوْبَةَ عَنْ عِبَادِهِ وَيَعْفُو عَنِ السَّيِّئَاتِ وَيَعْلَمُ مَا تَفْعَلُونَ

“Her Ellahu Te‘ala bitinê ye, yê ku toba ‘ebdêt xwe werdigirît û qebûl diket û xirabiyêt wan ‘efû diket û heçiya hûn diken Ew dizanît.”[820]

Xudê Te‘ala dibêjît:

أَلَمْ يَعْلَمُواْ أَنَّ اللَّهَ هُوَ يَقْبَلُ التَّوْبَةَ عَنْ عِبَادِهِ وَيَأْخُذُ الصَّدَقَاتِ وَأَنَّ اللَّهَ هُوَ التَّوَّابُ الرَّحِيم

819 Sûreta Şu‘era 213
820 Sûreta Şûra 25

“Erê ma hêj ew tê negehiştîne û nuzanin ku hema her Ellahu Te‘ala bitinê ye; yê ku toba ‘ebdêt xwe qebûl diket û her dîsa her Ew e; yê ku xêr û sedeqêt wan werdigirît û qebûl diket? Bê şik her Ellahu Te‘ala ye, yî toba tobedara qebûl diket û Ew gelekî birehm û merhemet e.”[821]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِلَّا الَّذِينَ تَابُوا وَأَصْلَحُوا وَبَيَّنُوا فَأُولَئِكَ أَتُوبُ عَلَيْهِمْ وَأَنَا التَّوَّابُ الرَّحِيمُ

“Belê ew têne; ewêt ku tobe kirî, xwe çak û baş kirî, heqî rohn û aşkira kirî. Ez dê toba wan qebûlkem, hema her Ez im yê ku toba tobedara werdigirim û qebûl dikem û Ez gelekî birehm û merhemet im.”[822]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يا أَيُّها الَّذِين آمنُوا تُوبُوا إِلى الله توْبة نصُوحا

“Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Hûn hema her bi tobeyeka ji dil û bêzivirîn bal Ellahu Te‘ala ve tobe biken.”[823]

Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

إِنَّ اللّهَ يُحِبُّ التَّوَّابِينَ وَيُحِبُّ الْمُتَطَهِّرِينَ

“Bê şik Ellahu Te‘ala, gelek hej tobedara diket û her dîsa Ew gelek hej wan jî diket ewêt ku xwe paqij diken û her xwe paqij radigirin.”[824]

821 Sûreta Tewbe 104
822 Sûreta Beqere 160
823 Sûreta Tehrîm 8
824 Sûreta Beqere 222

Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

قُلْ يَا عِبَادِيَ الَّذِينَ أَسْرَفُوا عَلَى أَنْفُسِهِمْ لا تَقْنَطُوا مِنْ رَحْمَةِ اللَّهِ إِنَّ اللَّهَ يَغْفِرُ الذُّنُوبَ جَمِيعاً

"(Ey Muhemmed!) Tu bêje Ellahu Te'ala yê dibêjît: "Ey gelî 'ebdêt min; ewêt ku hewe bi kirna guneh û xirabiya zulim li ruha xwe kirî û ji hedê xwe der ketîn! Qet hûn xwe ji rehma Ellahu Te'ala bêhûvî neken."[825]

Xudê Te'ala dibêjît:

إِلَّا مَنْ تَابَ وَآمَنَ وَعَمِلَ عَمَلاً صَالِحاً فَأُولَئِكَ يُبَدِّلُ اللَّهُ سَيِّئَاتِهِمْ حَسَنَاتٍ وَكَانَ اللَّهُ غَفُوراً رَحِيماً

"Belê ew têne yêt ku tobe diken, îman û baweriyê tînin, kar û 'emelêt baş diket, eha bo evêt hosa Ellahu Te'ala dê gunehêt wan guhorît û dê bo wan bi xêr hisab ket. Ellahu Te'ala gelekî 'efûkere û yî birehm û merhemet e."[826]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَتُوبُوا إِلَى اللَّهِ جَمِيعاً أَيُّهَا الْمُؤْمِنُونَ لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَ

"Ey gelî îmandaran! Hûn hemî hema her ji dil bal Ellahu Te'ala ve tobe biken; da ku hûn rûspî û serferaz bin."[827]

'Ebdullahê kurê Mes'ud (Xudê jê razî bît) dibêjît, min ji Pêxemberî-selat û selam li ser bin-) yê guhlê bî wî digot: Peşêman î û jovanî tobe ye'."[828]

825 Sûreta Zumer 53
826 Sûreta Furqan 70
827 Sûreta Nur 31
828 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya sehîhe

Xudê Te'ala dibêjît:

أَفَلَا يَتُوبُونَ إِلَى اللهِ وَيَسْتَغْفِرُونَهُ وَاللهُ غَفُورٌ رَحِيمٌ

"Erê gelo ma bo çî ew bal Ellahu Te'ala ve tobe naken û daxwaza 'efûkirnê bo xwe ji Ellahu Te'ala naken? Nê Ellahu Te'ala bo wan; ewêt ku ji dil tobe diken gelekî 'efûkere û yî birehm û merhemet e."[829]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَيَا قَوْمِ اسْتَغْفِرُواْ رَبَّكُمْ ثُمَّ تُوبُواْ إِلَيْهِ

"Ey gelî qewmê min! Hûn daxwaza 'efûkirnê bo xwe ji Rebbê xwe biken û paşê hûn bal Wî bitinê ve tobe biken."[830]

Eswedê kurê Serî'î (Xudê jê razî bît) dibêjît: Carekê sihabiya êxsîrek înande huzûra Pêxemberê Xudê Te'ala -selat û selam li ser bin- wî êxsîrî li huzûra Pêxemberî got: (Ey Xudayê min! Ez hema li ser destê Te bitinê û bo Te bitinê tobe dikem, ez li ser destê Muhammedî û bo Muhammedî -selat û selam li ser bin-Tobe nakem, îna Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin-gotê: Te heqî bo xudanê wê zanî)."[831]

Îmamê Qurtubî (Xudê jê razî bît) di Tefsîra xwe da dibêjît: Qet'iyen ne durust e bo kesekê; ku ew tewba wî kêsê îsraf li gel nefsa xwe kirî; Ew ê ku bi guneha ra kêşayî û kirîn qebûl biket (anku bêjîtê were li ser destê min tobe bike), yan jî hema ew ji dev xwe wî gunehkarî 'efu biket. 'Alim û zanayêt me dibêjin: Bê guman Cuhî û Fila xwe bi vî 'eslê dînî yê hinde yî mezin xirand û kafirî kir; çûnku

829 Sûreta Maîde 74
830 Sûreta Hud 52
831 Îmamê Ehmed (Xudê jê razî bît) vê hedîsê saxlem dibînît. Belê, ya ze'îfe

wan Ehbar û Ruhbanêt xwe ji bilî Xudayê bilind û bala bo xwe kirbine rebb; wan ji dev xwe digot heçiyê guneh kirîn divêt, ew bête nik Ehbarî yan û Ruhbanî û ew tiştekî bidetê da ku ew anku Ehbar yan û Ruhban gunehêt wî hunekarî jê daqutîtt (wî paqij biket), ewa bi wê hindê îftîra û bêbextî li Xudê Te'ala dikir, muheqeq ew bi wê hindê xirhan û ew ji rêka hîdayetê didûr bin.[832]

Ez dibêjim: Xudê dizanît 'esl û binîşa wê îsqatê ya ku evroke hindek cahêl û nezan di nav me da bo mirya pê 'emel diken ya ji nav dînê Cuhî û Fila hatî.

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمَن يَغْفِرُ الذُّنُوبَ إِلاَّ اللّهُ

"Ma ji Ellahu Te'ala pêvetir, qet kî dî yî we heye ku ew bişêt guneha bi xefirînît û 'efû biket?"[833]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَاللَّهُ يُرِيدُ أَنْ يَتُوبَ عَلَيْكُمْ

"Ellahu Te'ala divêt, û Ew gelek hezdiket ku Ew toba hewe wergirît û qebûl biket."[834]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَمَن لَّمْ يَتُبْ فَأُوْلَئِكَ هُمُ الظَّالِمُونَ

"Ewêt tobe neken, eha hema her ew in; yêt zalim û zordar."[835]

832 Tefsîra Qurtubî
833 Sûreta Alî 'Îmran 135
834 Sûreta Nîsa 27
835 Sûreta Hucurat 11

Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin- dibêjît: Yê bi rast î ji gunehêt xwe tobe biket û lêvebît, Heçwekî qet wî çu guneh nekirîn; wesa ew ji gunehêt xwe paqij dibît.[836]

Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin- dibêjît: Çu benî ademêt bê guneh nînin, belê baştirînê gunehkara ew in; ewêt ku li xwe dizivirin û her ji dil tobe diken.[837]

Şertêt qebûlbîna tobê çarin:

1- Tu xwe ji kirina wan guneha; ewêt ku tu dikey bide paş dûr bike; hêdî neke, desta jê bikêşe û bêje; nefa xwe bese raweste û stop.

2- Tu li ser kirina wan guneha; ewêt ku te berê kirîn baş yî peşêman û jovan be.

3- Tu yî micidbe û xwe qaîm ragire; ku careka dî hêdî tu qet li kirna wan guneha nezivirî û nekey.

4- Heke ew guneha te kirî girêdayê bi heqê mirovan ve bît; lazim e tu heqê wan û tiştêt wan li wan bizivirinî; çûnku ew heqinas e çî madî bît yan jî me'newî.

836 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya Hesen e
837 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya Hesen e

## BUSULMAN Ê GUNEHKAR

Busulmanê gunehkar, Ew ê ku gehiştiye Tewhîdê (anku Ew ê îman û bawerî bi êkatiya Xudê Te‘ala înandî) li roja qiyametê ‘aqibet û dûmahîka wî ‘aîdî Xudayê Jorî ye û bi hezkirna Wî ye:

Heke Ew hezbiket, Ew dê wî bi wan guneha ewêt ku wî di dinyayê da kirîn û jê tobe nekirî ciza ket, yan jî heke Ew hezbiket, bêcizadan Ew hema dê wî gunehkarî ‘efu ket û bete Biheştî, nê heke ew biçîte Cehnemê jî ew ebedî namînîte di Cehnemê da çûnku wî îman û bawerî ya înandî bi êkatiya Xudê Te‘ala; ew Xudan îman û baweriye anku muwehide.

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- dibêjît:

Heçî kesê çu şirîka bo Xudayê Jorî çêneket (û li ser wê hindê paqij bimrît) ew dê çite Biheştê, belê ew kesê şirîka bo Xudayê Jorî çêket (û ew ji wê şîrkê ya ku wî kirî û diket tobe neket û li ser wê hindê bimrît) ew dê çite Cehnemê.[838]

Em ji vê hedîsa Pêxemberî fehim dikeyn; ku şirîk çêkirin bo Xudayê Jorî guneha ji hemî guneha mezintire, heta yê ku şîrkê diket ew jê tobe neket qet‘iyen ew naête ‘efikirin û naçîte Biheştê.

Em dişên wan her heft gunehêt mezin û tehlîkêt giran; anku kebaîra; ewêt ku Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- ummeta xwe ji kirna wan hişyar kirîn û jê dayne paş hosa rêz bikeyn û bêjîn:

1- Çêkirna şirîk û hevala ye bo Xudayê Jorî.

2- Kirna sihrê û sêhirbazî ye.

838 Muslim

3- Bi zilm û neheqî kuştina Busulmana *ye*.

4- Xwarina faîz û rîbayê *ye*.

5- Bi hîle û neheqî xwarina malê êtîma *ye*.

6- Piştdan û revîna ji şerî *ye*; li demê Busulman rûy birûy xezayê li gel kafiran diken.

7- Îftira û bêbextî kirna li jinkêt xudan îman û bawerî *ye*; ewêt ku binamûs û şeref û dehmen paqij.

## XEYB: TİŞTÊT NEPENÎ Û BERZE

Xudê Te'ala dibêjît:

وَعِنْدَهُ مَفَاتِحُ الْغَيْبِ لَا يَعْلَمُهَا إِلَّا هُوَ وَيَعْلَمُ مَا فِي الْبَرِّ وَالْبَحْرِ وَمَا تَسْقُطُ مِنْ وَرَقَةٍ إِلَّا يَعْلَمُهَا وَلَا حَبَّةٍ فِي ظُلُمَاتِ الْأَرْضِ وَلَا رَطْبٍ وَلَا يَابِسٍ إِلَّا فِي كِتَابٍ مُبِينٍ

"Kilîlkêt xeybê yê li nik Ellahu Te'ala, ji Wî pêvetir qet kesekî dî xeybê nuzanît. Her Ew bitinê dizanît ka çî tişt di dêmî û di behrêda heye. Qet bêyî zanîna Ellahu Te'ala xwe belgek (ji darê) nakevît û heçî dindka di nav taryatiyêt 'erdî da û hemî tiştêt ter û hişk Ew wan hemyan bi timamî dizanît, ew hemî di nivîsîne di kitêbeka rohn û aşkira da (anku ew hemî bi carekê di nivîsîne di Lewhê parastî û mehfûz da)."[839]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلِلَّهِ غَيْبُ السَّمَاوَاتِ وَالأَرْضِ وَإِلَيْهِ يُرْجَعُ الأَمْرُ كُلُّهُ فَاعْبُدْهُ وَتَوَكَّلْ عَلَيْهِ وَمَا رَبُّكَ بِغَافِلٍ عَمَّا تَعْمَلُونَ

"Zanîna xeyba (her heft) 'esmanan û 'erdî her ya Ellahu Te'ala bitinê ye (anku hema her Ew bitinê dizanît ka çî di 'esmanan da û di 'erdî da heye) û hemî kar û bar her dê bi bal Wî ve êne zivirandin. Vêca tu her ji dil 'îbadet û ta'etî bo Wî bitinê bike û pişta xwe bi Wî bitinê qayim bike. Qet Rebbê te ji wan kar û kiryara yî xafil nîne ewêt ku hûn diken."[840]

---

839 Sûreta En'am 59
840 Sûreta Hud 123

Xudê Te'ala dibêjît:

أَلَم يَعلَمُوٓاْ أَنَّ ٱللَّهَ يَعلَمُ سِرَّهُم وَنَجوَىٰهُم وَأَنَّ ٱللَّهَ عَلَّٰمُ ٱلغُيُوبِ

"Erê ma ew nuzanin ku bê şik Ellahu Te'ala hemî nepenî û piste pista wan fehm diket û dizanît, (herdîsa ma ew nuzanin) ku bê şik her Ellahu Te'ala bitinê 'alimê xeybê ye (anku hema her Ew bitinê hemî tiştêt berze û nepenî dizanît)?"[841]

Qet ji bilî Xudê Te'ala kesekî dî xeybê nuzanît; 'alimê xeybê hema her Xudayê Jorî bitinê ye.

Pêxember-selat û selam li ser bin-dibêjît: Yê

biçîte dev xêvzankekî; remildarekî; (ewêt ku ji xeybê xeber diden), ya ew ji wan guhlê dibît bawer biket û bêjît ew rast dibêjin, ev e wî kafirî kir bi wî tiştî yê ku bo Pêxember pê hatî anku wî îman bi Qur'anê neînaye û wî guhê xwe neda ye Qur'anê lewma ew diçîte dev wan kahina û xêvzanka."[842]

Herdîsa Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: Yê biçîte dev xêvzankekî yan jî kahinekî, [843] pirsyarekê jê biket, nivêjêt wî yêt çil roja qebûl nabin.

Haşa hinde decalêt herimî bi Qur'anê, bi burca. bi fincanêt qehwê, bi kabêt heywana û bi gelek tiştêt dî û rêkêt şeytanî fehlka vedgirin, ew pê ji xeybê xeber diden, ew xelk û 'alemê bi vê hindê di xapînin û heta wan dişelînin jî.

841 Sûreta Tewbe 78
842 Muslim
843 Muslim

Te dît hinde decala ji wan gote: Xelk û ‘alemê em di şêyn ‘erdê xizîne lê aşkira bikeyn, tiştê berzebî yan yê hatiye dizîn bêjîn ka li kîrêye û ka kê birîye. Hindek jî hezîmeta bo xelkê didanin û ji xeybê xeber diden û dibêjine wan cahêlêt nezan: Hinde ecinêt ho û ho zerer ya gehandiye hewe û ya hol hewe kirî.

Kirin û bawerkirna van tişta hemyan eger û sebe bo şîrkê û kafiriyê.

Xudayê Jorî hosa dibêjît:

قُل لَّا يَعْلَمُ مَن فِي السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ الْغَيْبَ إِلَّا اللَّهُ ۚ

“Ey Muhammed! Tu bêje: “Hindî ewêt ku di ‘esmanan da û di ‘erdîda heyn qet kesek ji wan xeybê (tiştêt nepenî û berze) nuzanin, hema her Ellahu Te‘ala bitînê dizanît.”[844]

إِنَّ اللَّهَ يَعْلَمُ غَيْبَ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ ۚ وَاللَّهُ بَصِيرٌ بِمَا تَعْمَلُونَ

“Bê şik hema her Ellahu Te‘ala bitinê ‘alimê xeyba ‘esmanan û ‘erdî ye (anku hema her Ellahu Te‘ala bitinê hemî tiştêt veşartî û berze dizanît). Ellahu Te‘ala wan kar û ‘emela; ewêt ku hûn diken wan hemyan bi timamî dibînît.”[845]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَوْ كُنتُ أَعْلَمُ الْغَيْبَ لَاسْتَكْثَرْتُ مِنَ الْخَيْرِ وَمَا مَسَّنِيَ السُّوءُ إِنْ أَنَا إِلَّا نَذِيرٌ وَبَشِيرٌ لِّقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje: “Nê heke min xeyîb zanîba; ez da xêrêt xwe hêj zêde tir lê kem û qet çû caran çu zerer û ziyan jî nedigehişte min. Ez hema hişyarker û

844 Sûreta Neml 65
845 Sûreta Hucurat 18

mizgînî bêjim bo wî miletî yê ku îman û bawerye tînîn bi wî tiştî yê ku ez pê hatîm."[846]

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنَّ اللَّهَ عَالِمُ غَيْبِ السَّمَاوَاتِ وَالأَرْضِ إِنَّهُ عَلِيمٌ بِذَاتِ الصُّدُورِ

"Bê şik hema her Ellahu Te'ala bitinê 'alimê xeyba (her heft) 'esmanan û 'erdî ye. Bê şik Ellahu Te'ala, yî zana ye bi wî tiştî yê ku di dila da veşartî."[847]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلَا أَقُولُ لَكُمْ عِندِي خَزَائِنُ اللَّهِ وَلَا أَعْلَمُ الْغَيْبَ وَلَا أَقُولُ إِنِّي مَلَكٌ

"Tu bêje wa: "Ez nabêjme hewe xizînêt Ellahu Te'ala yê li nik min" û ez xeybê jî (tiştêt nepenî û berze jî) nuzanim. "Û ez nabêjim ez milyaketim jî."[848]

Xudê Te'ala dibêjît:

عَالِمُ الْغَيْبِ فَلَا يُظْهِرُ عَلَىٰ غَيْبِهِ أَحَدًا إِلَّا مَنِ ارْتَضَىٰ مِن رَّسُولٍ فَإِنَّهُ يَسْلُكُ مِن بَيْنِ يَدَيْهِ وَمِنْ خَلْفِهِ رَصَدًا

"Her Ellahu Te'ala bitinê 'alimê xeybê ye, qet Ew rê nadet û nahêlît kesek bi ser xeyba Wî hilbît û bizanît. Belê, ew têne yê ku Ew bo pêxemberîniyê dihilbijêrît, Ellahu Te'ala, milyaketa dihinêrît da ku li berahiya wî û li pişt wî zêrevanî û şehnetiyê li wî biken."[849]

846 Sûreta E'raf 188
847 Sûreta Fatir 38
848 Sûreta Hud 31
849 Sûreta Cin 26-27

Xudê Te‘ala dibêjît:

الَّذِينَ يُؤْمِنُونَ بِالْغَيْبِ وَيُقِيمُونَ الصَّلَاةَ وَمِمَّا رَزَقْنَاهُمْ يُنْفِقُونَ

“(Mutteqî û dîndar) hema her Ew ew in; ewêt ku ji dil îman û baweryê tînin bi xeybê û her bi rast î û durustî nivêjan diken û ew ji wî rizqî jî yê ku Me daye wan her xêr û xêrata diden (û bo belav kirna dînê Ellahu Te‘ala xerc diken).”[850]

850 Sûreta Beqere 3

# WELÎ; DOSTÊT XUDÊ TE‘ALA KÎ NE?

Welî û dostêt Xudê Te‘ala ew kesin; ewêt ku bê şik û guman îman û baweriyê tînin bi êkêtiya Xudê Te‘ala û bi hemî nav û sîfetêt Wî; ewêt ku di Qur’an û sunnetê da hatîn bi fehma Selefêt salih, ew ew in; ewêt ku li ser dewsa Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- dirêjîyê didene jîn û jiyara xwe, ew ew in; ewêt ku her bitirs û xwef xwe bi Xudê Te‘ala bitinê ve girê diden, ew ew in; ewêt ku xwe ji hemî bîd‘a û tiştêt heram û bi şûbhe dûr têxin, ew ew in; ewêt ku her bi tore û edeb û di xêrxwaz û bi rehm û merhemet li gel hemî mexluqêt Xudê Te‘ala, ew ew in; ewêt ku her kar û ‘emelêt baş û qenc diken.

Bi kurtî welî û dostêt Xudê Te‘ala hema her ew îmandarin ewêt ku dimutteqî û dîndar; anku ew îmandarin; ewêt ku ji Ehlê Sunnet û cima‘etê, belê ew mirovêt bîd‘etçî û yêt şîrkê û kafiriyê diken, qet ew ne welîne û ne dostêt Xudê Te‘ala ne, ew dujminêt Xudê Te‘ala ne û Xudê Te‘ala jî dujminê wa ye.

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنْ أَوْلِيَاؤُهُ إِلاَّ الْمُتَّقُونَ وَلَكِنَّ أَكْثَرَهُمْ لاَ يَعْلَمُونَ

“Welî û dostêt Xudê Te‘ala hema her mirovêt mutteqî û dîndar in. Belê, bahra pitir ji mirovan di vê hindê nagehin û nuzanin.”[851]

Ew kerametêt Xudê Te‘ala ji kerema xwe didete weliyêt xwe û li ser destêt wan aşkira diket; ew î‘tîbar û qedir girtineke, Xudê Te‘ala pê qedrê wan digirît û hej wan diket.

851 Sûreta Enfal 34

Divêt, yê welî wan kerameta; ewêt ku Xudê Te'ala didetê veşêrît û her sitare biket; bo kesekê ne bêjît, pê nexurît û xwe pê mezin neket.

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît, Pêxemberî -selat û selam li ser bin-yê gotî: (Ew kesê Weliyekî ji weliyêt min ezyet bidet yan jî bi kirin û gotinêt xwe 'aciz biket, bila ew baş bizanît, Ez neyarê wî me û ev e min î'lana şerî û herbê li gel wî aşkira kir).[852]

'Ebdullahê kurê îmamê 'Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît; Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Dost û weliyêt Xudê Te'ala hema her ew kesin; ewêt ku li demê mirov wan dibînît Xudê Te'ala bi ditina wan tête bîra mirovî).[853]

'Ebdullahê 'Emrê kurê 'Asî (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît; min bi aşkirahî ne bi nepenî ji Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê guhlêbî wî digot: (Dûndeha binemala filankesê (behsê hindeka ji mirovêt xwe diket) ew ne welî û piştevanêt minin, piştevan û harîkarêt min hema her Xudê Te'ala û mû'minêt salihin, belê wan heqê sîlê rehmê yê li ser min heyî; ku ez hema hindekê ji teratiya wê bigehînme wan, (anku pîçekê çavê xwe bideme wan û hind).[854]

Îmamê Ebu Henîfe (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Nê heke di dinya û axretê da zanayêt şirî'etî û 'Alim ne weliyêt Xudê Te'ala bin, qet bo Xudê Te'ala çu welî û dost nînin û nabin).[855]

Yunûsê kurê 'Ebdil E'la (Xudê jê razî bît) dibêjît; min gote îmamê Şafi'î (Xudê jê razî bît): Hevalê me, ye'nî:

852 Buxarî
853 El-Mêruzî û Teberanî
854 Mûtefequn eleyhî
855 Ji kitêba el- Feqîh Xetîb El-Bexdad î

Leysê kurê Se'dî, dibêjît: (Heke hewe dît zelamek yê li ser avê birêve diçît hûn xwe pê ne xapînin (ne bêjin ew welyê Xudê ye); heta ku hûn kar û 'emelêt wî nedene ber Qur'an û sunnetê; ka yî durust e  an ne), îmamê Şafi'î (Xudê jê razî bît) gote Yunûsî 'Ebdil E'layî (Xudê jê razî bît) wî kêm ya gotî. Belê, ez dibêjim: Heke hewe dît zelamek yê li ser avê birê ve diçît û li hewa yê difirît, hûn xwe pê ne xapînin (nebêjin welyê Xudê ye) heta ku hûn kar û 'emelêt wî nedene ber Qur'an û sunnetê; ka yî durust e an ne).[856]

Xudê Te'ala dibêjît:

أَلا إِنَّ أَوْلِيَاء اللّهِ لاَ خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلاَ هُمْ يَحْزَنُونَ ، الَّذِينَ آمَنُواْ وَكَانُواْ يَتَّقُونَ ، لَهُمُ الْبُشْرَى فِي الْحَياةِ الدُّنْيَا وَفِي الآخِرَةِ ، لاَ تَبْدِيلَ لِكَلِمَاتِ اللّهِ ذَلِكَ هُوَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ

"Hûn baş bizanin, bê şik qet çu tirs û xewf bo dost û weliyêt Ellahu Te'ala nîne û nabît û qet ew xemgîn jî nabin; dost û weliyêt Ellahu Te'ala hema her ew in; ewêt ku ji dil îman û bawerî înandî û xwe diparêzin ji bê-emriya Ellahu Te'ala. Mizgînî bo wan bît di jîn û jiyara dinyayê da û di axretê jî da. Qet çu guhorîn bo gotinêt Ellahu Te'ala nîne û nabît. Eha hema her eve ye, rûspiyatî û serferaziya mezin."[857]

Mu'azê kurê Cebelî (Xudê jê razî bît) dibêjît Pêxemberê

Xudê-selat û selam li ser bin- yê gotî:

( Mirovêt ji hemî mirovan pitir nêzîkî Min hema her ewîn; ewêt ku di îmandar û muteqî, bila ew ji kûy bin û li kîrê bin).[858]

856 Tebeqat eş-Şafi'şyîn
857 Sûreta Yunûs 64
858 Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Ev hedîs e ya sehîh e

‘Abdullahê kurê Mes‘ud û ‘Abdullahê kurê ‘Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) ew dibêjin: Muheqeq welî û dostêt Xudê Te‘ala, ew kesin ewêt; ku gava hindek wan dibînin Xudê Te‘ala bête bîra wan (anku reng û xulkê wan yî rehmanî ye).”[859]

Ji ya hindeka ve welî û dostêt Xudê Te‘ala hema her ew in; ewêt ku dimirî û ji zelama bitinê jî welî û dostêt Xudê Te‘ala yêt heyîn û radibin, neweye, ya rast eve ye; ku gelek welî û dostêt Xudê Te‘ala ji jinka jî yêt heyîn û yêt radibîn, û hindî bêjî bêhejmar welî û dostêt Xudê Te‘ala yêt sax jî yêt heyn, li ser vê dinyayê nihe di nav mirovan da di jîn.

859 Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît:Ev hedîs e ya sehîh e

## HİNDEK Jİ MUSTELEHATÊT EHLÊ FELSEFÊ; SOFÎ Û KELAMCİYA

Xudê Te'ala dibêjît

كَانَ النَّاسُ أُمَّةً وَاحِدَةً فَبَعَثَ اللَّهُ النَّبِيِّينَ مُبَشِّرِينَ وَمُنْذِرِينَ وَأَنْزَلَ مَعَهُمُ الْكِتَابَ بِالْحَقِّ لِيَحْكُمَ بَيْنَ النَّاسِ فِيمَا اخْتَلَفُوا فِيهِ

"Di dest pêkê da mirov hemî êk milet û ummeteka bitinê bin. Ellahu Te'ala her li dûvêk pêxember dihinartin, wan pêxemberan mizgînî dida (başa bi Biheştê) û yêt xirabkar jî ditirsandin û hişyar dikirin, li gel wan ew kitêb jî, ewêt ku rêka heq rohn û aşkira dikir yêt hinartine xwarê; da ku ew hukmî pê di navbeyna mirovan da biken li ser wî tiştî yê ku ew tê da diketine îxtîlafê."[860]

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنْ يَتَّبِعُونَ إِلَّا الظَّنَّ وَمَا تَهْوَى الْأَنْفُسُ وَلَقَدْ جَاءَهُمْ مِنْ رَبِّهِمُ الْهُدَى

"Bê şik ew hema yê bi dûv hizir û xiyala û wî tiştî dikevin yê ku dilê wan dixwazît. Bi sûnd, nê bo wan ji layê Rebbê wan ve rêka rast (anku Qur'ana kerîm) ya hatî!"[861]

Xudê Te'ala dibêjît:

لِيَمِيزَ اللَّهُ الْخَبِيثَ مِنَ الطَّيِّبِ وَيَجْعَلَ الْخَبِيثَ بَعْضَهُ عَلَى بَعْضٍ فَيَرْكُمَهُ جَمِيعاً فَيَجْعَلَهُ فِي جَهَنَّمَ أُوْلَٰٓئِكَ هُمُ ٱلْخَٰسِرُونَ

"Eve, da ku Ellahu Te'ala pîsatî û paqijiyê jêk vavêr û cuda ket û da wan kafirêt necis û herimî hemyan xirket û

860 Sûreta Beqere 213
861 Sûreta Necim 23

paşê hemyan hildete serêk û paşê gurbikete di nav agirê Cehnemê da. Eha hema her ew in yêt xusaret.”[862]

Her wekî em baş dizanîn ehlê felsefê û Kelamciya gelek gotinêt wan yêt xweser, anku gelek mustelehatêt wan yêt heyn, ewêt ku wan ji dev xwe çêkirîn û belav kirîn di nav ummetê da! Ev e her wekî van gotina:

‘Eqlîyat, Îlahîyat, ‘Ered, Cisim, Cewher, Ferd, Hulul, Îtîhad, Heyola, Lahot, Nasut û neh E‘rad, Dewr, Teselsul û yêt wekî van mustelehata; ku gelekêt dî jî yêt heyn.

Qet durust nîne mirovê îmandar wan bikarbînît di nav kitêbêt dînî da û bi taybetî di nav kitêbêt ‘eqîdê da binvîsît; nê ne durust e di derheqa Xudê Te‘ala da ev gotine bêne gotin ne bi nefîkirin û ne bi îsbat kirin; nê hinde me‘nêt batil û xelet yêt nav van mustelehatada heyn.

Ev mustelehatêt ehlê felsefê û Kelamciya bi wê me‘na ew dibêjin ne di nav kelamê Xudê Te‘ala da anku Qur’anê da û ne di nav sunneta Pêxemberê Wî jî da nînin û nehatî ne, qet kesekê ji sihabiya, tabi‘iya û ‘alimêt Îslamê yêt mu‘teber ev mustelehatêt Felsefî bi wê me‘na ehlê felsefê û Kelamciya pê murad û meqsed qet‘iyen negotîne û ne nivîsîne di nav kitêbêt xwe da.

Ji berhindê îmamê Ehmedê kurê Henbelî (Xudê jê razî bît) di wê mektuba xwe da; ewa ku wî bo xelîfê ‘Ebasiyan Mutewekilî nivîsî da dibêjît: (Min nevêt û qet ez heznakem kes bi van gotina baxivît; (anku bi van mustelehatêt ehlê felsefê û Kelamciya); ya baş ew e ku mirov hema her bi wan gotina; ewêt ku di nav kelamê Xudê Te‘ala da anku Qur’anê da û ewêt di nav sunneta Pêxemberê wî da û di nav gotinêt sihabiya, tabi‘iyêt wan; ewêt ku biçakî her li

862 Sûreta Enfal 37

dewsa waçûyîn baxivît û binvîsît, belê ji bilî van mirov bihinde gotinêt dî baxivît û binvîsît ew tiştekî seqet û kirêt e, nexasima bo îman û baweriya mirovî jî tehlîkeyeka gelek girane.

Zeynûl-‘Abidînê kurê Huseyîn (Xudê jê razî bît) dibêjît: Ne ji ‘îlim û zanînê ye ew tiştê me‘na wê neête zanîn, ‘îlm û zanîn ew tişte yê ku me‘na wê bête zanîn; ezmanê xelk û ‘alem ketîbîte ser; (anku ew tişte yê ku bi sened û îsbat bît).[863]

Ebu Qasimê Esbehanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Selefa ya red û înkar kirî ku mirov li ser fikrêt ehlê felsefê û Kelamciya baxivît û wan yê gotî: (Ev tişte li ser demê sihabiya û tabi‘iya nebû (Xudê ji wan hemyan razî bît) nê new e ye ku wan ev tişte dizanî û negotî ye, ji ber hindê divêt, em jî wan tiştan nebêjîn, yan jî wan nedzanî lewma wan negotî ye, divêt, em xwe ne ‘elimîne wî tiştî yê ku wan xwe ne ‘elimandiyê û negotî).

Ehlê felsefê û Kelamciya wan bi van gotinêt xwe yêt xweser; anku mustelehatêt xwe yêt me‘na wan ya batil û xelet bi taybetî di babetê ‘eqîdê; îman û baweriya bi Xudê Te‘ala mejiyê gelek Busulmana yê reş kirî û yê reş jî diken; nuzanin ka ew dê çewa îman û baweriyê înin bi Xudê Te‘ala, nexasima bi nav û sîfetêt Xudê Te‘ala.

Vêca ew anku ehlê felsefê û kelamcî bi van gotinêt xwe ewêt wekî; Teşbîh, Tecsîm, Terkîb, Hewadis, E‘rad û Tehyîz, ew wan sîfetêt Xudê Te‘ala û wesfêt mezinahiya Wî û kirnêt Wî bi wan mustelehata ewêt ku wan ji dev xwe çêkirîn ji me‘na wan ya rast varî diken û ji heqîqeta wan dûr têxin û betal diken!

863 Şerhul-‘îlel

Şeyxulîslam Îbin Teymiyê Herranî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Cehmî û Mu‘tezilî li ser bînîşa bîr û baweriyêt xwe yêt batil û xelet dibêjin: (Qet bo Xudê Te‘ala çu sîfet û wesf nîn, ew bi xiyalêt xwe yêt batil û xelet dibêjin: Nê heke Xudê Te‘ala hinde sîfet û wesf hebane, wê gavê Tecsîm û Teşbîhêt ne didurust da bo Xudê Te‘ala lazim bin; çûnku sîfet ‘Erede, ‘Ered xwe bi cismî ve digirît û peyda dibît).

Ji ber wê hindê heta ew firqa dibêjin; em Eş‘erîne, ew hema heft sîfeta bitinê bo Xudê Te‘ala aşkira û tesbît diken û hind, û Firqa Maturîdiya jî heşt sîfeta bitinê bo Xudê Te‘ala aşkira û tesbît diken! Ew dibêjin: Aqilê me hema van çend sifeta bitinê hejî Xudê Te‘ala dibînît û qet kesek jî nuzanît jî ka yê jirêve ev çend sifete bitinê bo Xudê Te‘ala bi aqilê xwe gotin ka kiye û ji kûve hatîne!

Berê xwe bidene fitna ehlê felsefê û Kelamciya; wan çewa bi van gotin û mustelehatêt xwe yêt xweser zerbe ya li ‘eqîde û bîr û baweriya Busulmana dayî û yê diden jî!

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا أَرْسَلْنَا مِن رَّسُولٍ إِلَّا بِلِسَانِ قَوْمِهِ لِيُبَيِّنَ لَهُمْ

“(Ey Muhemmed!) Heçî pêxemberê Me, berî te bo miletekî hinartî, îleh Me ew pêxember bi ezmanê wan (anku hema Me, êk ji wan bi xwe yê hilbijartî û bo wa) yê kirye pêxember da ku ew (Tewhîdê; rêka dînê Ellahu Te‘ala bo wan bi ezmanê) wan rohn û aşkira biket û bêjin.”[864]

Ya hatiye rîwayetkirin zar îmamê ‘Elî (Xudêjê razî bît) ew dibêjît: (Hûn bi terzekî we li gel xelk û ‘alemê baxivin; ku ew têbigehin û fehm biken, erê ma hewe divêt, ku

864 Sûreta Îbrahîm 4

xelk û ‘alem gotinêt Xudê Te‘ala û Pêxemberê Wî direw derbêxin û hisab biken!).[865]

Ya aşkira ye piştî Pêxemberî-selat û selam li ser bin- di qernê sê da, felsefe û ‘îlmê kelamî ji layê Mu‘teziliya ve yêt belavbîne nav ‘alema Îslamê, gelek Busulman yêt ketîne nav tebk û davêt wan û yêt pê mubtela bûnyin!

Vêca ferzil ‘eyne li ser her imandarekî nexasima yêt ‘alim û zana ku ew jirê ve ‘eqîde; bîr û baweriya rast û durust  bêxne di serê xwe da; xwe ji van fikir, hizr û bîr û baweriyêt şaş û xelet dûr bêxin, nê gava yê îmandar Tewhîd û ‘eqîda rast zanî û bi ser hilbû û dît, fer e ew bizanît jî ka çî bi zidê wê Tewhîd û ‘eqîda wî ye da ku ew xwe û rex û doranêt xwe jî ji wan fikir, hizir û bîr û baweriyêt xelet û batil dûr ragirît û muhafize biket.

Şa‘êrekî Îslamê dibêjît:

Min şer û xirabî zanî ne bo şerî; ku ez şerî û xirabiya bikem, belê da ku ez xwe pê ji şerî û xirabiya sitare bikem.

Nê ji mirovan heçî kesê şer û xirabiyan nezanît ew dê kevîte di nav şer û xirabiyan da

Heval û hogirêt Pêxemberî-selat û selam li ser bin- her wan pirsyar ji Pêxemberî dikirin; da ku ew bo xwe bi gotinêt Pêxemberî ‘eqîde; bîr û baweriya xwe rast û durust biken û bizanin, gelek cara jî wan pisyara tiştêt xirab û batil jî ji Pêxemberî dikirin da ku ew wan tiştan bizanîn û xwe jê dûr û sitare biken.

Huzeyfê kurê Yemanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Xelk û ‘alemê her pirsyara xêrê û başiya ji Pêxemberî-selat û selam li ser bin- dikir, belê min bi xwe pirsyara şer û xirabiyan jê

865 Buxarî

dikir, ji tirsa wê hindê da şer û xirabî ne gehîte min û da ku ez xwe ji şer û xirabiyan dûr ragirim).[866]

Pêxemberî-selat û selam li ser bin-: dibêjît: (Binîşe û çeqêt dînê Îslamê; anku ferz û emrêt dînî, êku û êku û li dûvêk dê êne xirab kirin û betal kirin, çî gava mirovan binîşe û çeqek xirab û betal kir, ew dê pêkulê ken da ku binîşe û çeqekî dî, di dûv wî ra xirab û betal biken, vêca binîşe û çeqê ‘ewilî yê ku ew radiken û diguhorîn, guhorîna şerî‘etê dînê Îslamê ye (bi hinde qanunêt wed‘î anku yêt dest çêker!) Binîşe û çeqê dînê Îslamê yê li dûmahîkê jî tête rakirin, rakirin û nemana nivêja ye; ev e her wekî em hemî evroke bi çavêt xwe dibînîn!).[867]

Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: (Muheqeq ji nihe û wê ve hinde firqe; ewêt ku muxalefeta wan kesa diken; ewêt ku bi Qur’an û sunnetê ‘emel diken dê derkevin û peyda bin.

Ev e her wekî di hinde hedîsa da hatî; Pêxemberî-selat û selam li ser bin-: yê gotî: (Ev ummeta he dê bîte heftê û sê firqe (73), heftê û du firqe dê çine cehennemê, firqeyek bitinê dê çîte Biheştê; ew ehlê cema‘etê ne; anku ew ew in; ewêt li dewsa Pêxemberî û sihabiya diçin).[868]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّا نَحْنُ نَزَّلْنَا الذِّكْرَ وَإِنَّا لَهُ لَحَافِظُونَ

“Bê şik Me, Qur’an (bo Muhemmedî -selat û selam li ser bin) ya hinartiye xwarê û bê şik hema her Em bi xwe jî dê wê muhafize û sitare keyn; (ji kêmkirin û zêde kirnê, û ji tehrîf û guhorînê).”[869]

866 Buxarî
867 Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît ev hedîs e ya sehîhe
868 Ebu Dawud
869 Sûreta Hicr 9

Muxûrê kurê Şu‘beyî (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberî-selat û selam li ser bin-: yê gotî: (Cima‘etek ji ummeta min dê her mînin diserketî li ser wan; ewêt ku muxalefeta wan diken, heta ku emrê Xudê Te‘ala têt anku heta qiyamet radibît, ew dê her diser ketî bin).[870]

Û di rîwayeteka dî jî da îmamê Muslim (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberî-selat û selam li ser bin-: yê gotî: (Cima‘etek ji ummeta min dê her mînît û ew dê emrê Xudê Te‘ala bicih înin, qet ewêt ku wan kêm dibîn yan jî ewêt muxalefeta wan diken, ew neşên çu zererê bigehîne wan, heta ku emrê Xudê Te‘ala bicihtêt; anku heta qiyamet radibît, her ew dê diserketî bin li ser hemî mirovan).[871]

Li dûmahîka zemanê Emewiya, tam li ser zemanê xelîfê ‘Ebasiyan Me’munî tercûma kitêbêt felsefa Yewnaniya gele ya bi rewac bû, heta evê hindê rêk bo cirûbira Kelamciya û felsefa mentiqçiya vekir bû û bi taybetî meydan bo Mu‘tezilî û heval bendêt wan firehkir bû!

Eve heta Ibin Nedîm di wê kitêba xwe da, ewa bi navê; (Fehrist) da dibêjît: (Carekê xelîfê ‘Ebasiyan Me’munî, di xewna xwe da zelamekî dibînît, ew gelek jê sehm girtî dibît, ew dibêjîte wî zelamî tu kî yî! Ew zelam dibêjîtê: Ez Eristatalîs im, Me’mun dibêjît: Ez bi dîtina wî gelel keyf xweş bim, min gotê: Ey Hekîm, ez dişêm pirsyarekê ji te bikem! Wî gotê bike, Me’mun dibêjît; min gotê: Tiştê baş çi ye! Eristatalîsî gotê: Ew tişt yî baş e yê ku aqil baş dibînît, min gotê paşê çî tiştê dî yî baş e! Wî got ew tişt yî baş e yê ku şirî‘et dibêjît yî baş e…[872]

Eha ew e ji hîngê were wî xelîfê ‘Ebasiyan anku Me’munî bi wê xewnê ev fitne û bîd‘eta; Kelamciya û

870 Buxarî
871 Muttefequn ‘eleyh
872 Îbn Nedîm kitêba Fehrist

felsefa mentiqçiya, wekî jehrekê ya berdaye di nav ‘alema Îslamê da, wî anku Me’munî ew e ji hîngê ‘eqîda xwe û ya geleka jî ya xirabkirî û herimandî! Heta vê gavê jî ‘alema Îslamê ya di xûna xwe digevizît ji ber wê jehir û rîpa wî, hinde cahêl û nezanêt şexisperês hêj yê benîştê wî diçûyîn û bêy ku ew şerim biken; ew li dewsa wî diber dewamin! Ew delîlêt ‘eqlî di ser delîlêt neqlî ra digirin; anku ew aqilê xwe didene berahîka Qur’an û sunnetê!

Vêca di wî demî da piştî ku te’sîra Mu‘teziliya tam ketiye ser desthilatdarêt wî demî, Mu‘teziliya û heval bendêt wan, didanêt xwe hesûn wan bi quweta asinî û agirî bid‘êt xwe li ser xelk û ‘alemê ferzkirin; heta wan li wan salêt mîhnetê da gelek ji zana û ‘alimêt Îslamê wekî Ehmedê kurê Henbel û Muhemmedê kurê Nuhî (Xudê ji wan her duka razî bît) û li gelekêt dî jî ji hedî zêde ‘ezabdan û di hebis û zîndanan da kuştin!

Vêca ya ferz û pêtivî ye li ser her imandarekî nexasima yêt ‘alim û zana ku ew hemî pêk ve bi tebayî li vê de‘we û doza; dînê xwe anku li ‘Eqîda Ehlê- Sunnet û cima‘etê; ‘eqîda Selefêt salih xudan derkevin.

Divêt, her îmandarek hindî şiyan û pêvehatina xwe Xudayê xwe bi Uluhiyet, Rububiyet, Esma û Sifetêt Wî ve baş binyasît û Pêxemberê Wî jî ku ew tercûmane di navbeyna Wî û ‘ebdêt Wî da; ji ecine û mirovan.

Her dîsa divêt, yê îmandar hemî kar û barêt dînê xwe; anku hemî kar û barêt ferz û wacib bizanît û xwe baş tê da şareza û bisteh û rehwan biket ji hemî rexan ve, fer e ku ew xwe bi ‘elimîne wî ‘îbadetî yê ku Xudê Te‘ala ferzkirî li ser wan anku kiriye ferzul‘eyn li ser Busulmana.

Vêca fer e her îmandarekî bi aqil û balix; çî mêr yan jin ew xwe li ber destê ‘alim û zanayekî bi ‘elimînîte van

tiştan hemyan û baş bizanît û heta mirnê pê ʻemel biket û bo xelk û ʻalemê jî her bêjît û aşkira biket.

Delîlêt wan yêt ʻeqlî; ewêt ku ew pê bêbextiyê li ʻeqli diken; çunku ʻeqil wan gotinêt wan; ewêt didirew û bêbinîşe tênagehît û fehim naket, ew heta ʻeqli jî perîşan û şaşdiken!

Divêt, em baş bi zanîn Busulman ji hemî dewr û zemanan pitr evroke; anku di vî halê Îslametî hinde tê da xerîbî muhtacî ʻeqîde; bîr û bawirya rast û durust e ; ew ʻeqîda ku ji hewayî, avê û xwarinê bo mejî, dil û ruha mirovan pêtivîtir, çunku bo mirovan serferaziya dina û axretê her bi vê hindê ye.

Xudê Teʻala dibêjît:

فَمَنِ اتَّبَعَ هُدَايَ فَلَا يَضِلُّ وَلَا يَشْقَىٰ

"Vêca heçî kesê bibîte tabiʻê rêka Min ya heq û rast ew di dinyayê da şaş nabît û li axretê jî çu îza û zehmeta nabînît."[873]

Îmamê Malik (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Sunneta Pêxemberî -selat û selam li ser bin-Gemya Nuh Pêxemberî ye (selam li ser bin) yê lê suwar bît ew dê xilasbît û yê jê vemînît; lê suwar nebît ew dê xendiqît).[874]

Yeʻnî Sunneta Pêxemberî -selat û selam li ser bin-anku ew rêk û rêbaza Selefêt salih piştî wî li ser dewam kirî ew wekî gemiya Nuhî ye (silavêt Xudê li ser wan bin); yê lê suwarbû û pê ʻemel biket; ev e ew xilas bû û bi serket, belê yê pişta xwe bidetê û terk biket; ev e ew dihîlak çû; di nav kafirî û şîrkê da xendiqî.

873 Sûreta Ta ha 123
874 Ji kitêba tarîxa Bexda

Ya aşkiraye felsefa Yewnaniya ew e ji berê da, bi mentiqê xwe yê fasd û bêbinîşe ‘eqîda Qur’anê di mejî û dilêt dûvelank û heyranêt xwe da ya mehuyî û pûç kirî, nê felsefa Yewnaniya ya biye egera mezin bo peydabîna gelek firqe û taîfêt xelet û xirhayî û kelamciya di nav ummetê da.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَن يُشَاقِقِ الرَّسُولَ مِن بَعْدِ مَا تَبَيَّنَ لَهُ الْهُدَىٰ وَيَتَّبِعْ غَيْرَ سَبِيلِ الْمُؤْمِنِينَ نُوَلِّهِ مَا تَوَلَّىٰ وَنُصْلِهِ جَهَنَّمَ ۖ وَسَاءَتْ مَصِيرًا

“Heçî kesê ku piştî rêka heq û rast bo aşkira bî dijminatiyê li gel Pêxemberî biket û ji bilî rêka îmandaran bo xwe bi dûv rêkeka dî bikevît, Em jî dê berê wî deyne wê rêkê; ya ku wî berê xwe dayê û Em dê wî beyne Cehnemê û ew der cih û warekî gelekî xirab û kirêt e.”[875]

Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Min hûn piştî xwe yêt hêlayne li ser ronahiyeka we (anku dînekî we yî zelal û bi delîl û sened) şeva wî ji roja wî ya rohntire, piştî min hema ew kes dê ji vî dînê hinde yî zelal û ron xirhin û serda çin; ewêt ku dihîlak çûyîn û diçin).[876]

‘Ebdullahê kurê Sebeî mirovekî cuhî bû, serve Busulman bû, belê ew Cuhyekî durû bû, wî gelek fikir ji felsefa Yewnaniya; ji bîr û baweriyêt wan yêt fasid û herimî yêt kirîne di nav Busulmana da, wî cuwanî û lawîniya dînê Busulmana ya kirêt kirî, wî binîşêt dînî bi serêk da yêt herifandîn, ew dujminê ji rêve ye, ew ew e; Ew ê ku ‘eqîde; anku bîr û baweriyêt xirab û fasid kirîne di nav rêzêt Busulmana da, ji ber ewa wî kirî, piştî hîngê gelek musîbet û atafêt giran yêt hatîne serê Busulmana ji layê ‘eqîdê anku bîr û baweriyê da.

875 Sûreta Nîsa 115
876 Îbn Mace

Di dûv ‘Ebdullahê kurê Sebeî ra jî gelek kesêt dî jî yêt rabîn, wan jî li ser rêk û dewsa wî diviya kiyan û heyîna ummeta Îslamê ji binî bi serêk da kavil û wêran biken, ev e her wekî Ce‘dê kurê Dîrhemî, Cehmê kurê Sefwanî û Bişrê kurê Mursî û gelekêt dî jî, ji bilî wan.

Eva hemyan pêkoleka gelek dijwar dikir, da ku dînê Îslamê ji meydanê raken û tovê Busulmana biqelînin. Belê, Xudê Te‘ala soz û we‘de ya dayî bo sitare û muhafizekirna vî dînê Îslamê.

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّا نَحْنُ نَزَّلْنَا الذِّكْرَ وَإِنَّا لَهُ لَحَافِظُونَ

“Bê şik Me, Qur’an (bo Muhemmedî selat û selam li ser bin) bi rêka wehyê ya hinartiye xwarê û bê şik hema her Em bi xwe jî dê wê muhafize û sitare keyn; (ji kêm kirin û zêde kirnê, û ji tehrîf û guhorînê).”[877]

Pêxemberî-selat û selam li ser bin-: yê gotî: (Cima‘etek ji ummeta min dê her mînin diserketî li ser wan; ewêt ku muxalefeta wan diken, heta ku emrê Xudê Te‘ala têt anku heta qiyamet radibît, ew dê her diser ketî bin).[878]

Îbn Cerîrê Teberî (Xudê jê razî bît) dibêjît: ‘Ebdullahê kurê Sebeî Cuhyek bû ji xelkê Sen‘ayê, deyka wî cariyeka reş bû, ew li zemanê îmamê ‘Usman Busulman bibû, paşê ew li nav welatê Yemenê gerha wî li berbû wan bixirînît, vêca wî dest pêkir ew li nav bajêrêt Hîcazê gerha paşê ew çû bajêrê Besrayê, di dûv ra ew çû Şamê, belê li Şamê wî rêka xwe li dev kesekê nedît; anku ew tiştê wî dixwast li wêrê bi dest wî ve nehat, ew ji wêrê hate derêxistîn, ew radibît ji wêrê diçîte bajêrê Misrê, wî li wêrê gote wa: Em

877 Sûreta Hicr 9. Ji kitêba Menhec el-Îmam eş-Şewkanî fîl- ‘Eq’idetî
878 Buxarî

ji gotina wan kesa ‘ecêb girtî dibîn; ewêt ku hizrdiken û dibêjin: ‘İsa (selam li ser bin) li dûmahîka zemanî dê ji ‘esmanan ête xwarê, belê ew bawer naken ku Muhemmed Pêxember jî -selat û selam li ser bin - piştî ku ew di dinyayê da mirî ew dê sax bîte ve, nê Xudê Te‘ala dibêjît:

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِي فَرَضَ عَلَيْكَ الْقُرْآَنَ لَرَادُّكَ إِلَى مَعَادٍ

“(Ey Muhemmed!) Bê şik hema her Ew Ellahê mezun, Ew ê ku Qur’an bo te hinartî û xwandina wê li ser te ferz kirî; ku tu her bixûnî (û bo xelk û ‘alemê bêjî û beyan bikey) Ew dê careka dî te zivirînîte ve Mekkehê.”[879]

Nê zivirîn û hatina Muhemmed Pêxember jî -selat û selam li ser bin - ya pêtivîtire. Paşê dûvra wî gote wa: Hizar Pêxember yêt hatîn û bo her Pêxemberekî jî wan jî wesiyekê yê hey, îmamê ‘Elî jî wesiyê Muhemmed Pêxemberiye -selat û selam li ser bin - Paşê wî got: Muhemmed Pêxember -selat û selam li ser bin – Xatemûl-Enbiya ye û îmamê ‘Elî jî Xatemûl-Esfiya ye.

879 Sûreta Qeses 85

# ŞÊX Û SOFYATÎ

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَقَدْ كَانَ لَكُمْ فِي رَسُولِ اللهِ أُسْوَةٌ حَسَنَةٌ

“(Ey gelî îmandaran!) Bi sûnd, bo hewe di gotin, kar û kirin (di hal û ehwalêt resulê Ellahu Te‘ala da) nimûneyeka gelek baş û berketî ya hey; anku hûn (di hemî şol, kar û barêt dînê xwe û di jîn û jiyara xwe da) hema her çav li Pêxemberî biken û wekî wî bin”.[880]

Belê sed‘eyîf û mixabinî (gelek ji) ehlê terîqetê dibêjin: (Heçî kesê yî bê şêx bît, ew li hember Xudê Te‘ala û Pêxemberê Wî yî gunehkare, çûnku bê şêx qet kes neşêt bi ser rêka hîdayetê hilbît, xwe heke ew hizar kitêbêt ‘îlmî jî jiber biket).[881]

Gelek ji şêxêt vî zemanî yêt şaş bîn û wan gelek kes jî şitî xwe yêt şaşkirîn, eve nexasma piştî ku destê siyasetê ketiye di nav wan da, ew bo dinya xwe gelek yêt zana bîn, ew hema her hevalêt hukumdara, zengîna axa, dar bidesta û yêt serketîne.

Qet ew ji wê ya ku ketiye serê wa lêvenabin, xwe çenda gotin, kar û kiryarêt wa bizidê Qur’ana Pîroz û sunneta Pêxemberî jî bin-selat û selam li ser bin-!

Îmamê Şafi‘î (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Heke zelamek li danê spêdê bibîte Sofî, ew heta di gehîte danê nîvro dê ehmeq bît û heçî kesê çil roja têkiliya sofiya biket, qet hêdî aqilê wî naête serê wî).[882]

880 Sûreta Ehzab 21

881 Kitêba el-Hedîqetun-Nediye fî Terîqet en-Neqşebendiye, Ya Muhemmed Sileymanê Bexdad î

882 Ji kitêba teblîs û îblîs

Îmam Ehmedê kurê Henbel (Xudê jê razî bît) ew dibêjîte: Busulmanêt zemanê xwe, hûn dihişyar bin! Têkiliya (va her du sofya anku) Harisê Muhasebî û Ssîrê Seqetî neken.[883]

Carekê zelamekî ji ehlê Nisêbînê gote îmamê Malikê kurê Enes (Xudê jê razî bît) Ey babê ‘Ebdullahî!

Li nik me hindek/qewmekê hey dibêjnê Sofî, ew gelek dixwen û di dûv ra ew dest bi qesîda diken û dibêjin û paşê ew pêk ve radibin û direqisin. Îmam Malik (Xudê jê razî bît) Got: Erê, ma ew bûçûkin? Wî zelamî got: Nexêr. Îmam Malik Got: Erê, ma ew didînin? Wî zelamî got: Nexêr, wî zelamî got: ew mirovêt pîremêrin. Îmam Malik Got: Qet min guhlê nebiye ku êkî ji ehlê Îslamê we kirbît; anku ya ew diken.[884] Merwanê kurê Muhemmed - ew hevalê Îmam Malik bû, ew dibêjît: Sê kesêt heyn ew di dînî da ne cihê baweriyê ne: Sofiyê terîqeta, mirovêt çîrokbêj û mirovêt bîd‘etçî, newebît têkilya wan kesa neken ewêt; ku bi dûv hewa û hewesê xwe ketîn.[885]

Îmamê Qurtubî (Xudê jê razî bît) di tefsîra xwe da, li demê tête ser tefsîra Sûreta Ta ha ayeta 93ê

أَلَّا تَتَّبِعَنِ أَفَعَصَيْتَ أَمْرِي

Dibêjît: (( Mezheb û rêka Sofiya betalî, cahêlî û delalet e, hîndîku dînê Îslamê ye kitêba Xudê Te‘ala anku Qur’ana pîroz û sunneta Pêxemberê Wî ya rast e, belê reqisîn û xwe melûl kirin...Ew ji dînê kafiran e, anku yê wa ye; ewêt ‘îbadet bo golikî kirî... Vêca fer e li ser hukumdarî û harîkarêt wî ku ew nehêlin ew di mizgefta da û li çu

883 Ji kitêba Telbîs û îblîs
884 Ji kitêba Telbîs û îblîs
885 Ji kitêba Tertîb el-Medarik

cihêt dî jî kom bibin, û qet ne durust e bo wî kesî yê îman û bawerî hey bi Xudê Te'ala û roja qiyametê ku ew biçîte nav kom û hereboşiya wan, divêt, ew li ser wê delalet û betaliya wan harîkariya wan neket, eva ku ez dibêjim; mezhebê îmamê Malik, îmamê ebû Henîfe, îmamê Şafi'î û îmamê Ehmedê kurê Henbele û ji xeyrî wan jî, ji îmamêt Busulmana, we billahît-Tewfîq)).[886]

Şêx Se'îdê Nursî (Xudê jê razî bît) di kitêba xwe (Leme'atê) da dibêjît: Ez dibêjme hewe, ev zeman û çaxê me, zeman û çaxê sitare û muhafize kirna îmanê ye, ne ya sitar e û muhafiz e kirna terîqetê ye. Bê guman bahra pitir ji wan; ewêt ku di çine Biheştê, ew ew in; ewêt ku bi çu terîqetêt sofiya ve xwe ne girêdayî, belê pa qet'iyen çu kes bê îman û bawerî naçine Biheştê.

Heta ew dibêjin anku Ehlê terîqetê: (Heçî kesê yî bê şêx bît, şêxê wî şeytan e) anku ew kafire. Heta ew îftîrayê li Pêxemberê Xudê jî-selat û selam li ser bin- diken, ew dibêjin:

((مَن لا شيخَ له؛ فشيخُه الشيطان))

" Haşa, bi devê wan bît ew dibêjin: Pêxemberî ev gotine ya gotî haşa!!!???

Îmamê Xezalî (Xudê jê razî bît) di kitêba xwe (el-Munqîzu mine ed-Delal) da dibêjît: Ya rast eve ye; divêt, em bêjîn û î'tîrafê pê bikeyn ku me muhtacî bi mu'elimekî (murşidekî) ya hey, belê divêt, ew mu'elim yî me'sum bît, ye'nî yî bê guneh bît, vêca madem we ye mu'elimê me yê me'sum hema her Muhemmed bitinêye -selat û selam li ser bin-. Ehlê terîqetê dibêjin:

886 Ji Tefsîra Îmamê Qurtubî

Ew kesê gazinda û î‘tirazî li şêxê xwe biket, ew kes dê ji rehma Xudê Te‘ala ête dûr kirin!:

((من اعترض إنطرد))

Her durûşmê Ehlê terîqetê eve ye: (Tu ey sofî! Li ber emrê şêxê xwe û di nav destêt wî da wekî perkê wî teyîrkî be; Ew ê ku li ber bayî yan jî wekî wî mirî be; Ew ê ku di nav destêt xesalî û mirîşoyî da!).

Jixwe durûşma wan ya ji hemyan mezintir jî her eve ye:

((شيخك جاسوس قلبك !))

(Şêxê te cehsûsê dilê te ye, anku şêxê te xeybê dizanît, yî pê agehe; dizanît ka çî di dilê te da heye û ka tu çî dikey, vêca tu yî hişyar be; çû caran bê-emriya şêxê xwe neke ha !:

Jixwe cahêlî û musîbeta mezin ew e ku ew bawer diken û dibêjin: Şêxêt me haşa xeybê di zanin!

Kelîme û gotina şêx her wekî di Qur’ana pîroz û sunnetê da hatî, me‘ne û meqsed jê ew zelame yê ku dane ‘emir bî; pîremêrê herişî; Ew ê ku ‘emrê wî gehiştiye pêncîhê yan jî pêncîh û êk saliyê û heta dûmahîka ‘emrê wî, ‘ereb dibêjne wan kesa jî şêx; ewêt ku rîhspî û mezinêt qebîle û ‘eşîreta xwe û dibêjne wan ‘alim û zanayêt mezin jî şêx, bo nimûne dibêjine îbn Teymiyeyî; Şeyxulîslam, Şex Muhemmed îbn ‘Ebdulwehhab û Şêx ‘Ebdurrehman ibn Nasir es-Se‘dî (Xudê Te‘ala ji wan hemyan razî bît).

Navê şêx piştî navê sofî yê peyda bî, ev navê şêx; anku şêxê terîqetê li dewrê Selefêt Salih di nav wan ne bû; ev navê şêx bi vê me‘na em dizanîn piştî Selefa li qernê sê yê di nav xelefa da peydabî.

Eve bo zanîn kelîme û gotina şêx di çar (4) cihan da di Qur'ana pîroz da ya hatî û di sunnetê jî da gelek cara ev navê şêx yê hatî, belê Qur'ana piroz û sunnet qet bi çu 'urfêt taybetî behsê kelîma şêx naken, belkî bi me'na luxetî; ewa ku pê hatî û navdar bî; ku piratî û pîremêriyê diken.

Xudê Te'ala dibêjît:

قَالُوا يَا أَيُّهَا الْعَزِيزُ إِنَّ لَهُ أَبًا شَيْخًا كَبِيرًا فَخُذْ أَحَدَنَا مَكَانَهُ ۖ إِنَّا نَرَاكَ مِنَ الْمُحْسِنِينَ

"Wan gote Yûsufî: "Ey wezîrê xudan qedr! Bê şik wî babekî pîr û gelek mezin yê hey, dê tu êkî ji me li şûna vî birayê me bigre. Bê şik em yê dibînîn tu ji mirovêt baş û qencîkerî."[887]

Xudê Te'ala dibêjît:

قَالَتْ يَا وَيْلَتَىٰ أَأَلِدُ وَأَنَا عَجُوزٌ وَهَٰذَا بَعْلِي شَيْخًا ۖ إِنَّ هَٰذَا لَشَيْءٌ عَجِيبٌ

"Kabaniya Îbrahîmî (Sarayê) got: "Wey li halê min! Erê, ma çewa dê min bûçûk bibin; ez ev pîrejina he û ev e, zelamê min e; ew jî yî pîr û kal e? Bê şik ev e, tiştekî 'ecêbî ye!"[888]

Xudê Te'ala dibêjît:

هُوَ ٱلَّذِى خَلَقَكُم مِّن تُرَابٍ ثُمَّ مِن نُّطْفَةٍ ثُمَّ مِنْ عَلَقَةٍ ثُمَّ يُخْرِجُكُمْ طِفْلًا ثُمَّ لِتَبْلُغُوٓاْ أَشُدَّكُمْ ثُمَّ لِتَكُونُواْ شُيُوخًا

887 Sûreta Yûsuf 78
888 Sûreta Hûd 72

“Eha her Ellahu Te‘ala ye, yê ku hûn jirêve ji axê û paşê ji çipkeka menî û paşê ji lismekî xûnê yêt xuliqandîn û çêkirîn. Paşê hewe bi bûçûkî dertêxît û didet û paşê hewe dihêlit; da ku hûn bigehine teng û benga xwe û paşê da hûn pîr û kalbibin.”[889]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَمَّا وَرَدَ مَآءَ مَدْيَنَ وَجَدَ عَلَيْهِ أُمَّةً مِّنَ ٱلنَّاسِ يَسْقُونَ وَوَجَدَ مِن دُونِهِمُ ٱمْرَأَتَيْنِ تَذُودَانِ ۖ قَالَ مَا خَطْبُكُمَا ۖ قَالَتَا لَا نَسْقِى حَتَّىٰ يُصْدِرَ ٱلرِّعَآءُ ۖ وَأَبُونَا شَيْخٌ كَبِيرٌ

“Vêca demê Mûsa gehiştiye ser kehniya ava Medyenê, wî kom û bireka mirovan li ser wê avê dît ku; berê xwe didetê ku ew yê pezê xwe av diden û ji wan wêvetir jî du kiçik dîtin, berê xwe didetê ku ew yê berê pezê xwe ji ser avê vedgêrin. Mûsay gote wa: “Hewe çi ye? wan her du kiçika got: “Heta şivan hemî pezê xwe avneden û neçin, em pezê xwe av nadeyn, nê babê me jî pîremêrekî gelekî pîr e.”[890]

Li roja fetha Mekkehê, Ebu bekrê siddîq (Xudê jê razî bît) diçît babê xwe; ebu Quhafeyî; Ew ê ku ji her du çavêt xwe yî hafiz, ji mal tînîte huzûra Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- çavê Pêxemberî vêket, gote kurê wî; Ebu bekrê siddîq (Xudê jê razî bît) dê bila te ev pîremêrê kal hêlaba li mala wî, em da çine seredana wî.

((يا أبا بكر هلا تركت الشيخ في بيته فذهبنا نحن اليه))

Carekê Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin-, di nav civateka sihabiya da yî rûnştî bû, sihabiya

889 Sûreta Xafir 67
890 Sûreta Qeses 23

tirarekî avê bo înand, Pêxemberî hindek jê vexwar, li rexê wî yê rastê kure cihêlek ji xelkê wê civatê hemyan yî buçûktir yî rûnşti bû,

((الأشْيَاخُ عن يَسَارِهِ ))

û hinde pîremêr li rexê wî yê çepê dirûnşti bin, Pêxemberî -selat û selam li ser bin-gote wî kure cihêlê li rexê wî yê rastê yî rûniştî, ey xortu! Tu dê destûriya min dey; ku ez vê ava jiber min mayî bideme van pîremêra

((الأشْيَاخَ))

îna wî kure cihêlê got: Ya Pêxemberê Xudê ez wê ava ji ber te mayî û ewa biye nesîbê min nademe kesekî, hema ew bo min e, îna Pêxemberî ew av da wî xortî.[891]

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît: Pêxemberê Xudayê Jorî -selat û selam li ser bin-dibêjît: (Sê kesêt heyin Xudê Te'ala li roja qiyametê li gel wan naaxivît û bi çavê rehmê berê xwe nadete wan û bo wan 'ezabeka gelek dijwar ya hey, êk ji wan hersê kesa pîremêrê zînakere).

((شَيْخٌ زَانٍ))[892]

Belê, gava vî zemanî ev gotin û kelîma şêx hate gotin eve behsê wî kesî ye; Ew ê ku serokê terîqetekê; Ew ê ku xelk û 'alemê gazîdikete bal şêxê xwe yê mezin û terîqeta wî ve.

Ev hinde anku terîqet, şêx û sofî li ser demê Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- û li wan her du qernêt di dûv wî ra jî nebin, ev nave li dûmahîka qernê sê yêt peyda bîn li nav Busulmana, ji ber vê hindê ev gotin û

891 Buxarî
892 Muslim

navêt he; terîqet, şêx û sofî fehim kirna wan bi wê me‘na ya ku em di vî zemanî da dizanîn ne ya durust e, çûnku ev navêt he bid‘e ne, qet‘iyen çu terîqet, şêxatî û sofiyatî di dînê Îslamê da nîn.

Terîqet; ji kelîma terîq ya hatî ye çêkirin; anku ew rêka lê tên û diçin. Belê, heke ji rexê îstîlahî ve, em berê xwe bideynê ka bo çî me‘nê hatiye danadin; terîqet xirvebîn û kombîna hindek kesa ye; ewêt ku di jîn û jiyara xwe da ji Tewhîd û ‘eqîda durust di dûr û deraz bi navê dînî li rex û doranêt şêxê terîqetekê.

Di dînê Îslamê da, qet çu delîlekî we nînin ku ferman û emir biket anku bêjîte me: Ferz û pêtivî ye ku hûn xwe bi terîqetekê ve girêbiden, belê hindî delîlêt di Qur’an û Sunnetê da hatîn ew hemî bi ferman û emir dibêjine me ferz û pêtivî ye li ser hewe ku hûn hema her xwe bi Qur’an û Sunnetê ve girêbiden.

Heke em bêyîn û li ser me‘na navê sofî jî rawestin; dê bînîn û zanîn ku sofî, ev nave yê ku hatiye danadin li ser wan kesa; ewêt ku xwe bi terîqeta ve girêdiden û li dûv hinde şêxa diçin jirêve li Kufayê yê aşkira û belav bî li nav ummetê.

Şeyxulîslam Ibin Teymiyê Herranî (Xudê jê razî bît), dibêjît: ‘Ewil kesê bi navê sofî hatiye niyasin ebû Haşimê Kufî ye, Ew ê  ku li sala 150 hîcrî mirî.

Belê yê ku jirê ve nîzama sofyetiyê bo derwêşa danadî ev sofiyê Îranî ye; anku Muhammed Ehmedul-Mihmî ye, Ew ê ku li sala 430hî hîcrî mirî, ev sofiyê he bi navê Ebû Se‘îd dihate niyasîn. Ev î sofî li bajêrê xwe, xanek nêzîkî mala xwe bo derwêşa avakir bû, wî nîzama terîqetê kirbû werasî; ku terîqet ji dûndeha bigehîte dûndehêt dî yêt ku di dûv wan ra radibin û tên.[893]

893 El-Fikru-Sofî ‘Ebdurehmanê kurê ‘ebdulxalqî

Ji ya hindeka ve navê şêx yan jî sofî rutbeyeka dînî ya mezin û bilinde, lewma di nav ehlê terîqeta da dibêjine hindeka şêx û ewêt ku li wan kom didin jî dibêjne wan jî sofî, qet çu rutbe û navêt hosa di nav dînê Îslamê da nînin.

Wa hema ji dev xwe ev nave; şêx û sofî û ehlê heqîqetê û ehlê terîqetê yêt cêkirîn û danadîne ser xwe.

Qet'iyen Qur'an û Sunnetê çu ferman û emir li me nekiriye; ku em bi navê şêx yan jî sofî gazî êkûdu bikeyn? Qur'an û Sunnetê, em bi navê mûslûman û mu'min yêt nav kirin û hind. Ji ber vê hindê qet di dînî da bo navkirna bi navê şêx yan sofî çu delîl nînin, ev her du navêt he anku navê şêx û sofî hema bid'eyeke piştî 'esrê se'adetê û wan her du qernêt di dûv wan ra hindeka hema ji dev xwe ev nave yêt danadîne ser hindeka û bi xelk û 'alemê nexasima bi mirovêt cahêl û nezan yêt dayne qebûlkirin.

Divêt, bi zanîn ev navet he anku navê şêx yan sofî diçêkirî ne, qet çu sened û 'eslê wan di dînî Îslamê da nîne.

Xudê Te'ala dibêjît:

هُوَ سَمَّاكُمُ الْمُسْلِمِينَ مِن قَبْلُ

"Ellahu Te'ala, berî nihe û di vê Qur'anê jî da navê hewe yê kirye Busulman (anku navê ewêt tabi'êt pêxembera hemya Busulman)."[894]

Navê zanayêt dînê Îslamê jî Ellahu Te'ala yê kiriye 'alim, ev e her wekî Qur'ana kerîm dibêjît:

894 Sûreta Hec 78

إِنَّمَا يَخْشَى اللَّهَ مِنْ عِبَادِهِ الْعُلَمَاءُ إِنَّ اللَّهَ عَزِيزٌ غَفُورٌ

"Miheqeq ji 'ebdêt (Ellahu Te'ala) hema her yêt 'alim û zana bitînê bi rast î û ji dil ji Ellahu Te'ala ditirsin; xwe ji bê-emriya Wî diparêzin. Bê şik Ellahu Te'ala, yî xurt û jêhatî ye û gelekî 'efûkere."[895]

Ma ferezeka ew anku Ehlê terîqetê; sofî navêt gelek 'alim û zahida têkhilêk diken û ji bêbextî bo xwe hisab diken û navêt wan 'alim û zahida yêt kirîne di nav secerêt bab û kalêt xwe da, ew xelk û 'alemê bi wan nava dixapînin! Ew dibêjin: Em yê li ser rêka wan, ew bi wan qenc û çaka dixurin belê bîr û bawerî û kar û 'emelêt wan gelek dijêk cuda ne!

Nê ya fer e em bizanîn, ev zatêt he; ewêt ku Ehlê terîqetê navêt wan tînin û di nav kitêbêt xwe da gelek behsê wan diken, ew û ew ji rexê 'eqîdê da; bîr û baweriyê da gelek ji êkûdu didûr in, ev e bo nimûne em dê navê çendeka ji wan 'alim û zahida bêjîn: Fedlê kurê 'Eyadî, Îbrahîmê kurê Ethemî, ebu Sileymanê Daramî, Ehmed kurê ebu Hewarî, Me'rufê Kerxî, Cuneydê Bexdad î, Şêx 'Ebdulqadirê Geylanî, şêx

Hemadê Debas î, Şêx ebu Beyanî, Şêx 'Ediyê kurê Musafirî, Huzeyfê kurê Qetadeyê Mer'eşî û Şeyxulîslam ebu Ferec 'Ebdulwahidê Şêrazî ev e hemî zana û 'alimêt dînê Îslamê ne, 'eq'ida wan ya rast û durust e.

Ma kî yî we heye gazinda ji van 'alim û zana biket; evêt ku me navêt wan gotîn; nê ew hemî Ehlê zud û teqwayê ne, bahra pitir ji van li ser demê Selefêt salih yêt jiyayîn, 'Eqîda wan ya durust e ; çûnku 'Eqîda wan ya Ehlê Sunnet û cema'etê ye; ya Selefêt salihe, berê xwe bidene heyata wan jîn û jiyara wan; da ku hûn baştir wan

895 Sûreta Fatir 28

binyasin ka ew kîne, divêt bizanîn jî gelek bêbextî bi navê şêxatiyê yê li wan zata hatiye kirin.

Ehlê terîqetê; anku şêx û sofî gelek behsê îmamê Ebû'l Hesenê-Eş'erî, îmamê Şafi'î û îmamê Henefî diken (Xudê ji wan hemiya razî bît) Pa dê heke rast e ku hûn hej wan diken, bo çî hûn nabine pêyrew û tabi'êt wan! Bo çî hûn 'Eqîda wan qebûlnaken! Belê, ya rast terîqetçî; anku şêx û sofî 'Eqîda Selef û xelefa di navêk hildiken! Heçî kesê ne li ser fikra wan bît, ew wan xelet dibînin û qet ew wan na dene nav xwe.

Belê fer e bizanîn fikir û efkar, bîr û baweriyêt Ehlê terîqetê; ewêt ku şêx û sofî û peyrewêt wan li ser diçin û pê 'emel diken ji rêve ji van kesan yêt hatîne wer girtin; Hellac (309h), Îbn 'Erebî (558h), Îbn Berrecan (536h), Şuştirî (668h) Îbn Seb'în (669h) Sedir Qunewî (673h) Tilimsanî (690h) 'Ebdulkerî Ceylî (767h) Bestamî (188h) 'Ebdulxenî Nablisî (1143h) Ehmed Tîcanî (1737h) û ji gelekêt dîjî yêt wekî va.

Belê fere baş bizanîn; ew zana û 'alimêt navê şêxatiyê li ser; ewêt ku anegora kelamê Xudê Te'ala (Qur'ana Pîroz) û Sunneta Pêxemberî -selat û selam li ser bin- ya rast û durust xizmeta vî dînî kirî û diken û dibêjin, ew rêber û 'ezîzêt ummetêne, cunku wa hemiya li ser rêka 'eqîda Ehlê- Sunnetê; Selefêt salih dîn yê gotî û yê dibêjin jî, Xudê Te'ala ji wa hemiya razî bît amîn.

Nê gelek 'alim û zanayêt Rebanî bi navê şêxatiyê xizmeteka gelek mazin bo dînê îslamê ya kirî û yê diken jî (Xudê ji wan hemiya razî bît).

# ÎMAN Û BAWERİYA SOFİYA

1- Li nik ehlê terîqetê anku li nik şêx û sofiya ‘abid û me‘bud, Xaliq û mexluq yan jî wekî ku ew dibêjin; Lahot û Nasut êkin, ew baweriyê bi hulul û îtîhadê tînin.

Hulul û îtîhad du new‘êt baweriya kafiriyê ne, her wekî ji me‘na wan her duka ya aşkira û diyare, ku ew dibêjin: Bi devê wan bît (haşa) Xudê Te‘ala yê bihujî û helbiye di nav hindek mexluqêt xwe da û li gel wan yê biye êk, ev e wekî baweriya Fila ku ew dibêjin: Xudê Te‘ala yê bihujî û helbiye di nav bedena ‘İsayî da (silav li ser bin) û li gel wî yê biye êk, me‘na îtîhadê jî; ewa ku hêj ji hululê jî xirabtire, ev e ku ew dibêjin: Xudê Te‘ala yê bihujî û helbiye di nav hemî tiştan da û li gel hemî tiştan yê biye êk (haşa).

Hulul û îtîhad du mustelehêt sofya û batiniya ne û musteleh wehdetul-Wucud jî ser ji wa ye.

Şêx Muhemmedê kurê Îbrahîm el-Hemed (Xudê jê razî bît) dibêjît: Bê guman ‘eqîda hulul û îtîhadê kafirî û îlhada ji hemî kafirî û îlhada mezitir e (Ye‘nî yê bawer û qebûl biket, ev e ew bi kafirî û îlhada ji hemyan mezintir kafirbû) -Xudê me jê biparêzît-. Ew pêve diçît û dibêjît:

Belê Îtîhad ji Hululê gelek xirabtire, hulul ew e ku ew dibêjin: Xudê Te‘ala yê bihujî û helbiye di nav bedena êkî da û li gel wî yê biye êk, belê gotina îtîhadê ku ew dibêjin: Xudê Te‘ala yê bihujî û helbiye di nav hemî tiştan da û li gel hemî tiştan yê biye êk, ew gelek xirabtir e ji wê ya ku ew bo hululê dibêjin: ku Xudê Te‘ala yê bihujî û helbiye di nav bedena hindeka ji mexluqêt xwe da û li gel wan yê biye êk.

Belê bawerkirna van hemyan anku hulul, îtîhad û wehdet ul-Wucudê bi aşkirahî baweriyeka betal û batile, bê şik dînê Îslamê yê hatî da ku van bawerî û î‘tîqadêt

batil ji nav mejyê mirovan raket û mehû biket; çûnku ev bawerî û î‘tîqadêt he ji mezheb, felsefe û senemperêsiya Hindiya, Yewnaniya, Cuhiya û Fila û ji xeyrê wan jî yêt hatîne wergirtin, hemî direw in û di bê‘asas û binîşe ne.[896]

Eve ‘eqîda mezinê wa ye; anku ya Îbn ‘Erebî û peyrewêt wî ye, haşa bi devê wî bît ew dibêjin:

Hindîke Se û Berazin ew îlahêt me ne

Hindîke Xudê Te‘ala ye; ew rahibeke di dêrê da.[897]

Şêx û sofî bi îman û baweriya xwe; anku bi qebûlkirna: Hulul, îtîhad û wehdetul-Wucudê tînin, haşa ew hindî tiştêt di vê dinya yê da heyn; ew wan tiştan hemyan bo xwe xudê dibînin û dizanin!

Ev î‘tîqad û bîr û baweriya he kafirî û şîrka mezin e. Xudayê Jorî me dûr ragirît ji vê ‘eqîda batil û ji ehlê wê jî; ewêt ku baweriyê pê tînin.

2-Ew anku sofî bawerdiken û dibêjin: Şêxêt me yêt mirî û yêt sax bila ew çend ji me didûr jî bin ew dişên bo me muhtaciyêt me, şol û karêt me biqetînin û çêken. Ji xwe li ser vê hindê gotinêt wan di meşhûrin; ev e li demê ku ew dibêjin: Medet ya şêxê min yan jî ya xewsê min!

3-Ew anku sofî bi baweriya xwe; we hizirdiken û dibêjin: Şêxêt wan; ewêt ku ew pêve digirêdayî sexbêrîyê li ‘alemê diken; ew li gel Xudê Te‘ala tedbîr kar û barêt vê dinya yê; ‘alemê û kaînatê birêve diben (haşa).

4- Ew anku sofî gelek rîwayetêt bê‘esil û direw rast didêrînin û bo xwe dikene dîn (ew dînê xwe li ser wan rîwayetêt bê‘esil, direw û xewna ava diken).

896 Ji kitêba Mustelehatunb fî kutub el-‘Eqîde
897 Ji kitêba Futuhat

5- Ew anku sofî bi îman û baweriya xwe dibêjin: Pêxember ne miriye, em her mededê anku harikariyê ji wî dixwazin û daxwaz dikeyn.

Belê pa Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّكَ مَيِّتٌ وَإِنَّهُم مَّيِّتُونَ

"Ey Muhammed! Muheqeq tu dê mirî û ew jî dê mirin."[898]

Nê heke mirovek, rabît wan tiştan; ewêt ku divêt, hema her ew bes ji Xudayê Jorî bitinê bêne xwastin û daxwaz kirin, ew wan tiştan ji bilî Xudayê Jorî ji êkî dî; çî ew yî mirî yan jî yî sax bît; nêzî wî bît yan jî yî dûr bît bixwazît û daxwaz biket ew dê kevîte nav şîrkê û dê bîte muşrîk.

Eha anegora pêtiviyêt vê bingehê, heke sofiyek rabît; mededê [harikariyê bi du‘a] ji şêxê xwe; ji şêxê wê terîqetê ya ku ew pêve yî girêdayê bixwazît û daxwaz biket; çî ew şêxê wî yî sax bît; nêzî wî bît yan dûr bît yan jî ew şêxê wî yî mirî bît ev e hingê ew kirna wî sofî şîrka aşkira ye.

Xudayê Jorî ferman diket û dibêjît:

وَيَعْبُدُونَ مِن دُونِ اللَّهِ مَا لَمْ يُنَزِّلْ بِهِ سُلْطَانًا وَمَا لَيْسَ لَهُم بِهِ عِلْمٌ ۗ وَمَا لِلظَّالِمِينَ مِن نَّصِيرٍ

"Ew, ji bilî Ellahu Te‘ala yê ‘îbadetî bo wan tiştan diken; ewêt ku Ellahu Te‘ala çu delîl û burhan pê nehinartîne xwarê û di derhaqa wê hindê da jî, bo wan bi xwe jî çu ‘ilim û zanîn nîne. Qet bo zalim û zordaran çu harîkar nînin û nabin."[899]

898 Sûreta Zumer 30
899 Sûreta Hec 71

Belê Xudê neket cahêl û dîndarêt nezan ew medhêt êkî biken; ew dê wî firînin û bene ber ‘esmana yan jî heke ew pavêne hindeka ji wan kesa jî; ewêt ku ne tabi‘î şêxêt wan, ew sed bêbextiya li wan diken û ew, wan di nav xelk û ‘alemê da dişkênîn û dikene filsekî sor xwe bila ew kî bît jî. ‘Eynen ev e bi timamî wekî metela hindeka ji wa sofiyêt cahêl û nezan e; ewêt ku hema kor korane bi dûv hinde şêxa dikevin û ew şêxêt xwe Biheştî dizanîn û wan difirînin, ew ji direw û bi bêbextî bo wan kirametêt ‘ecayêbî çêdiken û dibêjin: Şêxêt me dê me li gel xwe bene Biheştê!

# ÎMAM EBÛ'L HESENÊ-EŞ'ERÎ (XUDÊ JÊ RAZÎ BÎT)

Ebû'l Hesenê-Eş'erî (Xudê jê razî bît); 'Eliyê kurê Îsma'ilê Eş'erî ye, ew êk e ji neviyêt Sihabiyê navdar; Ebûl-Musayê el- Eş'erî (Xudê jê razî bît), ji ber hindê ew bi neqil navê Eş'erî yê meşhur bî, ew sala 260'ê hîcrî li Besrayê yê hatiye dinya yê, û li sala 324'ê hîcirî li Bexdayê yê çûye ber rehma Xudayê Jorî

(Xudê jê razî bît).

Jirê ve wî li ber destê zirbabê xwe şêxê Mu'teziliya; ebû 'Eliy el-Cubbaî dest bi xwandinê yê kirî. Piştî du sal di ser mirna şêxê Mu'teziliya; ebû 'Eliy el-Cubbaî ra borîn, wî mudehê çil (40) sala li ser fikir û bîr û baweriyêt Mu'teziliya berdewamî ya daye jîn û jiyara xwe û heta ewî gelek kitêb di derhehqa bîr û baweriyêt Mu'teziliya da yêt nivîsîn.

Belê wî li sala 305'ê hîcrî li ser mînbera mizgefta bajêrê Besrayê, di nav hereboşiyeka gelek mezin da bera'eta xwe ji Mu'teziliyê û Mu'teziliya bi aşkirahî ya day û diyar kirî ku ew hêdî ne Mu'tezilî ye.

Ew kitêbêt wî di derheqa bîr û baweriyêt Mu'teziliyê û Mu'teziliya da nivîsîn, wî ew hemî yêt avêtin û berzekirîn, ew bi avêtineka dijwar; hetka Mu'teziliya dibet û ew êk bi êk şaşî û xeletiyêt wan bi gotinêt xwe aşkira û rêzdiket û her wî digot: Pêtivî ye em hema her xwe di kîtaba Xudê Te'ala (Qur'anê) û sunnetê werkeyin, li dûv sihabiya û tabi'iya û ehlê hedîsê biçîn.

Qonaxêt bîr û baweriyê; ewêt ku Ebû'l Hesenê-Eş'erî (Xudê jê razî bît) derbazkirn û borandîn di jîn û jiyana xwe da:

Qonaxa êkê û ya jirê ve:

Ew mudehê (40) çil sala li ser fikir û bîr û baweriyêt Mu'teziliya bû û heta wî di wî mudehî da gelek kitêb di derhehqa bîr û baweriyêt Mu'teziliya da nivîsî bûn.

Qonaxa duwê:

Ew e ku piştî ew ji Mu'teziliyetiyê ziviriye ser rêka 'Ebdullahê kurê Kullabî.

'Ebdullahê kurê kullabî ew, ew e yê ku jirê ve binîşa 'eqîde; bîr û baweriyêt firqa Eş'eriya danadîn, nê ew e ji hîngê heta evroke hemî Eş'erî piştî ku Ebû'l Hesenê-Eş'erî (Xudê jê razî bît) xwe ji nav wan avêtî, li ser rêka 'Ebdullahê kurê Kullabî di berdewamin, belê ew navê Ebû'l Hesenê-Eş'erî, ji bêbextî didane ser xwe û yê maye li ser wan, heta 'eynen firqa Maturîdiya jî wekî wan li ser rêka 'Ebdullahê kurê Kullabî diberdewamin.

Belê tabi'êt van her du firqa anku Eş'erî û Maturîdiya piştî wan gelek ji bîr û baweriyêt Cehmî, Mu'tezilî û feylesofa yêt kirîne di nav mezhebêt xwe da.

Ebû'l Hesenê-Eş'erî, di dûmahîka kitêba xwe da; ewa ku bi navê (Meqalat-ul-Îslamiyyin), behsê 'eqîda 'Ebdullahê kurê kullabî diket û dibêjît: Ew zelamekî gelek bi qabilyet bû; di mucadele û cirubirê da; wî hîngê gelek bi dijwarî bersinga Mu'tezîliya û feylesofa digirt û gotinêt wan yêt şaş û xelet red dikirin, belê li gel wê hindê wî xeletî û kêmasiyeka gelek mezin dikir; wî hema her bi aqilê xwe bêyî beyan kirna ayet û hedîsa mucadele li gel Mu'tezîliya û feylesofa dikir! Reîs û pêşengê Ehlê- Sunnetê îmam Ehmedê kurê Henbel jî (rahîmehullah), gelek yê avêtiye Kullabiya anku wan Eş'eriyêt 'ewlî û berahîkê, wî digot: Ew bîd'etçîne, newebît têkilya wan neken û bi ser wan ve neçin.

Qonaxa sê ji jîn û jiyara Ebû'l Hesenê-Eş'erî

(Xudê jê razî bît):

Ev qonaxa sê, ya zivirîna li ser bîr û baweriyêt Ehlê sunnet û cima'etê, anku jîn û jiyara wî ya dûmahîkê heta mirna wî.

Ev Qonaxa 'emrê wî ya dûmahîkê bi kitêba wî ya dûmahîkê "El-Îbane 'an usuli'd-diyane" ewa ku wî li dûmahîka 'emrê xwe da nivîsî; ya diyar û pêşçav e; bo her kesekê berê xwe bidetê û bixûnît.

Eve ew bi xwe; anku Ebû'l Hesenê-Eş'erî (Xudê jê razî bît) di kitêba xwe da ewa ku bi navê "El-Îbane 'an usuli'd-diyane" da dibêjît: "Hêdî ji nihe wê ve; di derbara 'eqîdê da ez jî 'eynen hema wê dibêjim ya; ku reîs û pêşengê Ehlê- Sunnetê imam Ehmedê kurê Henbelî (rahîmehullah) gotî û dibêjît.

Vêca yê li ser vê Qonaxa dûmahîkê guhê xwe bidete Ebû'l Hesenê-Eş'erî (Xudê jê razî bît) ev e ew bi ser 'eqîda Ehlê- Sunnet û cima'etê anku 'eqîda Selefêt salih hilbû û gehişte ser rêka rast û durust.

Belê Ew ê li ser Qonaxa êkê yan jî ya duwê li dûv gotinêt Ebû'l Hesenê-Eş'erî biçît, ev e wî muxalefeta Ebû'l Hesenê-Eş'erî bi xwe û Ehlê- Sunnet û cima'etê jî kir.

Belê rîsala wî ewa bi navê; (Risale ila ehli' s-Sexr) û nexasima kitêba wî ewa ku bi navê (Meqalat-ul-Îslamiyyin), ev her du kitêbêt wî bo me baş 'eqîda wî; ewa ku wî xwe pê bi Ehlê sunnet û cima'etê ve girêdayî rohn û aşkira diken.

Wê roja ew li bajêrê Bexda mirî, bi dengekî bilind li ser cenazê wî hate gotin: Evroke berevan û harikarê Sunnetê mir û çu ber rehma Xudê Te'ala.

Vêca tu jî ey birayê Busulmanê îmandar! Her wekî Ebû'l Hesenê-Eş'erî (Xudê jê razî bît) xwe ji nav wê gêrê avêtî, tu jî xwe ji nav wan ewêt ku dibêjin; em Eş'erî ne, xwe pavêje û derkeve. Tu xwe bi 'eqîda selefêt salih; Ehlê-Sunnet û cima'etê ve qaîm girê bide da ku serê te tenabît û dilê te rihet bît heta mirnê.

Qet em çû caran naavêjne Ebû'l Hesenê-Eş'erî (Xudê jê razî bît) û em behsê wî bixirabî nakeyn haşa, çûnku ew li dûmahiya 'emrê xwe yê ziviriye ser rêka Ehlê- Sunnetê; Selefêt salih; 'eqîda wî ya rast û durust e. Qet ew ne li ser 'eqîde; bîr û baweriya wan ne ewêt ku dibêjinê: Eş'erî, ev nave ji bêbextî yê maye bidûv wî ve, çunku wî bi xwe beraeta xwe ya ji 'eqîda wan Eş'eriya, ya dayî û xwe ji nav wan yê avêtî, baş berê xwe bidene jînenîgara wî nexasima ji layê 'eqîdê; bîr û baweriyê da hûn dê zanin ku 'eqîda wî çend ya zelale; çunku 'eqîda wî jî 'eynen wekî 'eqîda Ehlê-Sunnetê; Selefêt salih e ji hemî rexan ve.

Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin- dibêjît: Mirovê îmandar we yî hişyar e; ducara ji êk kunê tiştek neşêt pêve bidet.[900]

Ya baş ew e; em hema her vê du'ayê bo xwe bikeyn û bêjîn: Ya Rebbî ey Xuda! Em bo xwe hîvî û ricaya ji Te diken; ku Tu heqiyê nîşa me bidey û Tu 'emelkirna bi heqiyê bikeye nesîbê me, her dîsa em bo xwe hîvî û ricaya ji Te diken; ku Tu batilî xirab û batil bîniye pêşçavêt me û Tu xwe dûrkirna ji batilî jî bikeye nesîbê me.[901]

Berê xwe bidenê tarîx xweş şahide, gelek 'alim û zana berî Îmam Ebu Hasenê Eşari (324 h), (Xudê jê razî bît) û didûv wî ra jî li dûmahîka 'emrê xwe yan jî li ber sekeratê yêt zivirîne ser 'Eqîda selefêt salih; Ehlê- Sunnet

900 Buxarî
901 Ezkara Îmamê Newewî

û cima‘etê, ev e bo nimûne em dê navê çendeka ji wan bêjîn:

Îmam ebu Welîdê Kerabisî (214 h), Îmam Ne‘îmê kurê Hemad (229 h), Îmam Ebu Hasenê Eşari (324 h), Îmam-el Haremeyn Cunî(478 h), Îmam-ı Gazali (505 h), Fexreddinê Razi (606 h),

Îmam Îbnul Qeyyim (751 h), Muhammed Reşit Rida (1354 h), Abdulqadirê kurê Bedranê Dimeşqê (1346 h), Muhammed Hamid-el Faqî(1387 h), Abdurrahman-el Wekîl (1390 h), Muhammed Xelîl Heras (1390 h), Teqiyeddîn-el Hilali (1406 h), Alî Et-tantawî (1420 h), Muhammed Cemîl Zeyno (1431 h), û ‘alimê Tunsî Muhammed el-Mekkî kurê ‘Ezuzî, Zanayê Êraqê Mehmud Şukrî Alusî û Şêx ‘Îd ‘Ebasî, ‘Alimê Ezherê ‘Ebduzahir babê Semhî, Zanayê Mexribê Muhammed Zemzemî, Zanayê Şamê Muhammed Behcet Beytar û Şêx ‘Ebdulqadir Sindî û ji bilî wan jî gelek û gelekêt dî jî, li gelek welat û bajêra, (Xudê Te‘ala ji wan hemyan razî Bît) Amîn.

## EŞ‘ERÎ Û MATURÎDÎ KÎNE?

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَا تَكُونُوا كَالَّذِينَ تَفَرَّقُوا وَاخْتَلَفُوا مِن بَعْدِ مَا جَاءَهُمُ الْبَيِّنَاتُ ۚ وَأُولَٰئِكَ لَهُمْ عَذَابٌ عَظِيمٌ

“Newebît (ey gelî îmandaran!) Hûn şitî wan nebin; ewêt ku piştî heqî bo aşkira bî, paşê jêk belav bîn û ketîne îxtîlafê û mayne pêk ve. Eha bo wan ‘ezabeka gelek mezin ya hey.”[902]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ فَرَّقُوا دِينَهُمْ وَكَانُوا شِيَعًا لَّسْتَ مِنْهُمْ فِي شَيْءٍ ۚ إِنَّمَا أَمْرُهُمْ إِلَى اللَّهِ ثُمَّ يُنَبِّئُهُم بِمَا كَانُوا يَفْعَلُونَ

“Bê şik ewêt ku dînê xwe parçe parçe kirî û birbir bîn, qet tu bi çu tiştî ji wan nînî (û nagehiye wa). Belê, hisaba wan hema ya li nik Ellahu Te‘ala. Paşê Ew dê wan bi kar û ‘emelêt wan agehdar ket û dê bo wan bêjît ka wan çî kirye; ji başî û xirabiyan.”[903]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِن يَتَّبِعُونَ إِلَّا الظَّنَّ وَمَا تَهْوَى الْأَنفُسُ

“Bê şik ew hema yê bi dûv hizir û xiyala û wî tiştî ketîn yê ku dilê wan dixwazît.”[904]

---

902 Sûreta Alî ‘Îmran 105
903 Sûreta En‘am 159
904 Sûreta Necm 23

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الظَّنَّ لَا يُغْنِي مِنَ الْحَقِّ شَيْئًا إِنَّ اللَّهَ عَلِيمٌ بِمَا يَفْعَلُونَ

“Bê şik hizir û xiyal çû caran cihê heqiyê nagirin û faydeyî nadane mirovî. Ellahu Te‘ala yî zana ye bi wan tiştan hemyan yêt ku ew diken.”[905]

وَمَنْ يُشَاقِقِ الرَّسُولَ مِنْ بَعْدِ مَا تَبَيَّنَ لَهُ الْهُدَىٰ وَيَتَّبِعْ غَيْرَ سَبِيلِ الْمُؤْمِنِينَ نُوَلِّهِ مَا تَوَلَّىٰ وَنُصْلِهِ جَهَنَّمَ ۖ وَسَاءَتْ مَصِيرًا

“Heçî kesê piştî rêka heq û rast bo aşkira bî dujminatiyê li gel Pêxemberî biket û ji bilî rêka îmandaran bo xwe bi dûv rêkeka dî bikevît, Em jî dê berê wî deyne wê rêkê ya ku wî berê xwe dayê û Em dê wî beyne Cehnemê û ew der cih û warekî gelekî xirab û kirêt e.”[906]

Xudê Te‘ala dibêjît:

بَلْ نَقْذِفُ بِالْحَقِّ عَلَى الْبَاطِلِ فَيَدْمَغُهُ فَإِذَا هُوَ زَاهِقٌ وَلَكُمُ الْوَيْلُ مِمَّا تَصِفُونَ

“Belê Em, dê heqiyê li nav serê batilî dideyn, ew dê batilî mehûy diket, vêca hema herhadirî ew ji binî radibît, mehûy û pûç dibît. Weyl û ‘ezaba giran bo hewe bît ji ber wan salo-xeta; ewêt ku hûn hejî Ellahu Te‘ala dibînin û bo dibêjin.”[907]

Eş‘erî û Maturîdî ji hedî zêde bi aqilê xwe dixurin; ew delîlêt aqilî di ser delîlêt neqlî ra radigirin, ew anku Eş‘erî û Maturîdî, hema hinde sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala bitinê qebûl diken. Eş‘erî heft sîfet û wesfa bo Xudê Te‘ala sabit dizanin û qebûl diken anku” ‘Îlîm, qudret, îrade, heyat, semi‘, besar, kelamî û hind.” Belê, hindek ji Eş‘eriya yêt

905 Sûreta Yunus 36
906 Sûreta Nîsa 115
907 Sûreta Enbiya 18

heyn ew çarde sîfet û wesfa bo Xudê Te‘ala qebûl diken û Maturîdî heşt sîfet û wesfa bo Xudê Te‘ala qebûl diken; anku ‘Îlîm, qudret, îrade, heyat, semi‘, besar, kelam û tekwînê.”

Eş‘erî û Maturîdî ew, wan sîfet û wesfêt dî hemyan bi te’wîlêt xwe yêt batil û xelet înkar û red diken.

Di ‘eslê xwe da ji layê ‘eqîde; bîr û baweriyê da ev her du firqe anku “Eş‘erî û Maturîdî” êkin, çunku di navbeyna wan da di derheqa ‘eqîdê; bîr û baweriyê da xîlafeka kêm ya heyî; ew jî ya lefzî ye û ev her du firqêthe kelamcî ne.

Maturîdî firqeyeka Kelamciya ne, ew diderheqa ‘eqîde; bîr û baweriyê da yê li ser rêka Ebu Mensurê Maturîdî, Ew ê ku li zemanê xwe bi delîl û bi burhanêt ‘aqilî û kelamî gelek berevanî ji dînî kirî hemberî neyarêt xwe xaseten li gel; Mu‘tezilî û Cehmiyya.

Eş‘erî û Maturîdî dibêjne xwe: Ehls- Sunne wel-Cema‘e, belê pa li nik lêkolîn û tehqîq kirinê baş aşkira û diyar dibît ku ew ne ji Ehlê-Sunnetê û cima‘etê ne, belê rast e li hemberî Mu‘tezilî û Cehmiyya ew Ehlê- Sunnet û Cema‘etê ne.

Qet çu firqe wekî van her du firqêt Kelamciya; anku Eş‘erî û Maturîdiya di nav xwe da di aloz û bi cirûbirtir nînin-hema mezhebê Şî‘egeriyê anku Rafizî nebin-.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَاعْتَصِمُوا بِحَبْلِ اللَّهِ جَمِيعًا وَلاَ تَفَرَّقُوا

“Hûn hemî pêk ve xwe bi werîsê Xudê Te‘ala ve qayim bigirin (anku hûn hemî pêk ve û ji dil xwe di Qur’anê werken û her pê ‘emel biken) û newebît hûn jêk belav nebin.”[908]

908 Sûreta Alî ‘Îmaran 103

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَأَنَّ هَٰذَا صِرَاطِي مُسْتَقِيمًا فَاتَّبِعُوهُ ۖ وَلَا تَتَّبِعُوا السُّبُلَ فَتَفَرَّقَ بِكُمْ عَن سَبِيلِهِ ۚ ذَٰلِكُمْ وَصَّاكُم بِهِ لَعَلَّكُمْ تَتَّقُونَ

“Bê şik eha hema her eve ye, rêka dînê Min ya heq û rast (anku rêka dînê Îslamê; rêka Qur’ana kerîm), vêca hûn hema her bibne tabi‘êt rêka dînê Min bitinê, qet hûn bi dûv çu rêk û ta û bayêt dî nekevin (heke hûn li dûv wan biçin û guhê xwe bidene wa) ew dê hewe ji rêka dînê Ellahu Te‘ala dûr û veder ken. Eha Ellahu Te‘ala bi vê hindê qewyatiyê li hewe diket; da ku hûn xwe biparêzin ji bê-emriya Wî.”[909]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا آتَاكُمُ الرَّسُولُ فَخُذُوهُ وَمَا نَهَاكُمْ عَنْهُ فَانْتَهُوا وَاتَّقُوا اللَّهَ إِنَّ اللَّهَ شَدِيدُ الْعِقَابِ

“Heçî tiştê Pêxember didete hewe hûn wergirin û heçî tiştê nehya hewe jî jê biket hûn xwe jê bidene paş. Hûn ji Ellahu Te‘ala bitirsin; (bê-emriya Wî neken). Bê şik cezayê Ellahu Te‘ala gelekî zor û dijwar e.”[910]

Ev her du firqêt he, ewêt ku dibêjinê “Eş‘erî û Maturîdî”; ewêt ku di babetê sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala da li dûv rêbazeka bi bîd‘e çûyîn û diçin, berê wan bo rêka te’wîl û xirabkirna me‘na sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala yê hatiye lêdan, wan bi wê hindê di ‘eqîdê da muxalefeta li gel Ehlê- Sunnet û cima‘etê, Selefêt salih anku Sihabî, tabi‘î û tabi‘êt tabi‘iya ya kirî û yê diken jî.

Ev her du firqêt he; ew wan sîfet û wesfa; ewêt ku Xudê Te‘ala bo xwe di Qur’an pîroz da û ewêt Pêxemberî

909 Sûreta En‘am 153
910 Sûreta Heşr 7

di Sunneta sehîh û rast da xeber jê dayî û diyar kirîn, ev e wekî; destêt Xudayê Jorî, wechê Wî, çavê Wî, tilyêt Wî, rizamendiya Wî, viyana Wî, keniyê Wî, bilindbîn û sekinîna Wî bi zatê xwe li ser ‘erşî û hatina Wî; wekî hatina Wî bi zatê xwe bo ‘esmanê dinya yê, Eş‘erî û Maturîdî van hemyan bi te’wîl û tehrîfêt xwe me‘na wan ya zahirî qebûl naken.

Ew anku Eş‘erî û Maturîdî di babetê sîfet û wesfêt Xudayê Jorî da, li ser rêka te‘wîlê û tehrîfê diçin; te‘wîlê ku me‘na muxalifî zahirî ye û tehrîf jî xirabkirin û guhorîna lefza ye, her wekî ku ew me‘na nessaka mirad pê heyî tehrîf diken; ev e wekî her du destêt Xudê Te‘ala ew dibêjin me‘na wan quwet û nî‘metêt Wî ne yan jî lefza diguhorin, wekî îstîwayê ew dibêjin me‘na wê îstîla ye, ew bi vî karêhe xwe ji heqiyê; ji rêka bîr û baweriya Ehlê-Sunnetê dûr diken…

Ew anku Eş‘erî û Maturîdî delîlêt aqilî di ser delîlêt neqlî ra digirin, ew bi vê hindê yêt şaş bîn; çunku ew wan sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala me‘na wan ya zahirî qebûl naken, ew dibêjin; haşa bi vê wesifdanê Xudayê Jorî dişuphîte mirov û beşera! Ji berhindê em me‘na wan ya zahirî qebûl nakeyn.

Bi vê dîtina wan û qebûlnekirinê qet‘iyen ew ne ji Ehlê-Sunnet û cima‘etê ne û naêne hisab kirin jî.

Îmam ebû ‘Umer ez-Zucacî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Mirov di zemanê cahêliyê da bi dûv wan tiştan diketin ewêt ku ‘aqil û tebî‘etê wan baş didît, belê piştî Pêxember-selat û selam li ser bin- hatî ew zivirandin û berê wan da binik rêka şirî‘etî ve, vêca ‘aqilê durust ew e; yê ku ew wan tiştêt şirî‘etî baş dîtîn, baş bibînît û wan tiştêt şirî‘etî kirêt û ne baş dîtîn, ew jî kirêt û ne baş bibînît).[911]

911 Kitêba Î‘tisam ya Şatibî

Nê aqilê durust her dê li gel rêbaza durust bît; anku aqilê durust her tabi‘ê delîlêt “Neqlî ye” anku Qur’anê û sennetê ye û dê wan qebûlket, di navbeyna wan da çû caran muxalefet peyda nabît.

Jixwe kitêba Şeyxulîslam Ibin Teymiyê Herranî (Xudê jê razî bît) ewa ku bi navê: (‘Edem Te‘arud El‘eqil we nneqil); ewa wî li ser vê hindê nivîsî, ew kitêba wî yazde (11) cilde.

Xudê Te‘ala dibêjît:

يُحَرِّفُونَ الْكَلِمَ عَن مَّوَاضِعِهِ

“Ew gotina ji cihê wan diguhorin.”[912]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَذَرُوا الَّذِينَ يُلْحِدُونَ فِي أَسْمَائِهِ سَيُجْزَوْنَ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ

“Hûn ji wan bigerhin û wan bihêlin bi hûvya Min ve; ewêt ku navêt Ellahu Te‘ala bi hinde me‘nêt dî diguhorin, paşê ew dê êne ceza kirin, ji ber wî tiştî yê ku wan dikir.”[913]

Şeyxulîslam Îbin Teymiyê Herranî (Xudê jê razî bît) dibêjit: (Îlhad egere bo guhorina me‘na tiştekî ye bal tiştekî dî yê batil ve).[914]

Îmamê Malikê kurê Enes (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Hûn li bîd‘a û bîd‘etçiya dihişyar bin; xwe jê wan dûr biken, êkî gotê ya babê ‘Ebdullahî, bîd‘e çi ye? Wî got: Bîd‘e eve ye, yê ku hema ji dev xwe anku bêdelîl diderheqa navêt Xudê Te‘ala da, sîfetêt Wî, kelamê Wî, ‘îlmê Wî û qudreta wî da taxivît, ew xwe li ser wan tiştan bêdeng

912 Sûreta Nîsa 46
913 Sûreta E‘raf 180
914 Mecmu‘ el-fetawa

naket; ewêt ku Sihabiya û tabi‘êt wan; ewêt ku bi qencî li dûv wan çuyn, xwe li ser bêdeng kirî).[915]

Gelek kes we hizir diken ku Eş‘erî hema di mesela sîfetêt Xudê Te‘ala bitinê da, di cuda ne ji Ehlê Sunnet û cema‘etê, nexêr ne we ye; belê ew di gelek mes’ele û babetêt ‘eqîdê da di cuda ne ji Ehlê Sunnet û cema‘etê.

Çûnku ew wan ayeta hemyan; ewêt ku behsê sîfetêt Xudê Te‘ala diken bi te’wîl û tehrîfêt xwe betal diken.

Heta Eş‘erî heft sifeta û Maturîdî heşta sifeta bitinê bo Xudê Te‘ala qebûl diken!"

Belê ew anku Eş‘erî û Maturîdî van sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala yêt xeberî; ewêt ku di Qur’an û sunnetê da hatîn; ewêt ku sîfet û wesfêt zatê Xudê Te‘ala ne, diguhorin û te’wîldiken, ev e wekî:

Rûy, Çav, Dest, Tilî, Baq (Saq), pê (Ling) û ji xeyrî wa jî, yan jî van sîfetêt fê‘lî ewêt Xudê Te‘ala bo xwe îsbat kirin, ev e wekî:

Axiftina Wî, Bilindbîn û rawestana Wî li ser ‘Erşî, hatina Wî her şev li sê êka dûmahîkê bo ‘esmanê dinyayê, xaliqya Wî, raziqya Wî, tingijîna Wî, keyf xweşiya Wi, keniyê Wî, razîbînya Wî, ne viyana Wî, girtina tiştan û ji bilî van jî; ji fê‘il û kirnêt Xudê Te‘ala; ewêt ku dibêjnê: Sîfet û wesfêt ixtiyarî anku gava Wî viya û hezkir, Ew pê radibît û diket, wekî kelamê Wî, gava Wî viya Ew pê taxivêt her gav.

Ev sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala, sîfet û wesfêt xeberî û fê‘lî ne, ew ji tixûb û hedê aqilî diderketîne, ji berhindê Eş‘erî û Maturîdî wan nessêt şirî‘etî; anku wan ayet û hedîsa ewêt ku behsê sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala diken diguhorin û te‘wîl diken!

915 Ji kitêba Zemul-lkelam

Ev şupha Eş‘erî û Maturîdiya anku guhorîn û te’wîlkirna sîfet û wesfêt Xudayê Jorî ya batil û betal e. Ka ma çewa û li kîrê ev sîfet û wesfêt Xudayê Jorî wekî yêt mirov û beşera ne??!!

Belê divêt, em jî her wekî Selefêt xwe yêt salih; bêy guhorîn û te’wîlkirin û bêteşbîhkirin û betalkirna me‘na wan; bi tewfîd û hewalekirna keyfiyeta wan, ne ku ya me‘na wan, çûnku me‘na van sîfet û wesfêt Xudê Te‘ala yêt xeberî û fê‘lî ya aşkira ye û nê ka ew çewa layiqî mezinahî û celala zatê Xudê Te‘ala ne, em wesa wan hemyan bi temamî qebûl bikeyn û bi îman û baweriyeka qaîm û mikum îman û baweriyê pê tînîn.

Serîkehnî û wergirtina ‘îlim û zanîna ‘eqîdê li dev va ewêt ku dibêjnê:Eş‘erî hema bes bi rêka aqiliye û li dev Maturîdiya jî rêka zanîna ‘îlim û zanîna dînî çî ‘eqîde yan jî usula kar û barêt dînî bi rêka Îlahiyata ye; anku Aqliyat û sem‘iyata ye.

Li nik wan anku Maturîdiya zanîn û wergirtina ‘Eqîdê, Tewhîd û sifetêt Xudê Te‘ala bi rêka Aqliyata bitinê ye,

Li dev Eş‘eriya zanîn û têgehiştina heyîn û wucuda Xudê Te‘ala hema her bi rêka zanîna hudus û qîdemê bitinê ye, ew di vê barê da qet xwe di wan ayet û hedîsêt sehîh nahegînin; ewêt ku behsê heyîn û wucuda Xudê Te‘ala diken!

Delîlê êkatî û Tewhîda Xudê Te‘ala li deveş‘eriya bi nefya tesniyê ye, Te‘eduda zatî û nefya teb‘îd, terkîb û tecziyê ye, ew înkara van sîfeta anku Wechî, her du desta û çavî diken, çunku ev e li dev wan delaletê dikene ser terkîb û cuz’a!

Û ji rexê îman û baweriyê ve jî, ewêt ku dibêjin: Em Eş‘erîne ew di derheqa îman û baweriyê da ‘eynen wekî

Murciya û Cehmiya dibêjin; çûnku di hemî kitêbêt wan da, ya hatî û ew dibêjin: Îman û bawerî hema tesdîqa biqelbî bitinê ye.

Ew anku Eş‘erî di derheqa kelamê Xudê Te‘ala anku Qur’anê da jî, (bi devê wan bît) ew dibêjin: Qur’ana pîroz kelamê Xudê Te‘ala ye, belê hema ew me‘neyeka ezelî û ebedî ye, ya qaîme bi nefsa Xudê Te‘ala ve, ew ne bi herfa û dengî ye û ne bi xeber dan û gotinê ye; anku ew dibêjin: Ev Qur’ana evroke di nav destêt me da ne kelamê Xudê Te‘ala ye (haşa)!

Heçî kesê bivêt van heqîqeta baş bizanît; bila ew berê xwe bidete kitêbêt Eş‘eriya; da ku ew bi xwe bizanît ka ew di derheqa Qur’ana kerîm da çî dibêjin, wellahî ew dê ‘ecêb girtî bît, ew hema herhadirî bêrawistan dê beraeta xwe ji ‘eqîde û bîr û baweriyêt Eş‘eriya det û ew dê xwe ji nav wan avêjît.

Ev bîd‘e; gotina kelamê nefsî, hema xiyaleka Eş‘erî û Maturîdiya ne, wan hema ji dev xwe ya çêkirî û gotî.

Jixwe di mesela qederê da Eş‘eriya divêt, sulhê di nav beyna Qederî û Cebrî ya da biken; belê wan bi wê hindê jî muxalefet ya li gel Ehlê Sunnet û cema‘etê kirî.

Eş‘erî û Maturîdiya bi gelek tiştêt dî jî muxalefet ya li gel Ehlê Sunnet û cema‘etê kirî û yê diken jî!

Yê ev ‘eqîda dibêjinê: ‘Eqîda Eş‘eriya piştî ‘Ebdullahê kurê Se‘îdê kurê Kullabî aşkira kirî û belav kirî; Ebû’l Hesenê-Eş‘erî ye (Xudê jê razî bît) û ev firqe bal wî ve tête lê dan, ev e ya xelete, nê yê jirêve ‘eslê vê ‘eqîda eş‘eriya danadî ‘Ebdullahê kurê Se‘îdê kurê Kullabî ye. Rast e Ebû’l Hesenê-Eş‘erî li berahîkê Mu‘tezilî bû, wî jî wekî Mu‘teziliya hîngê û wî demî delîlêt aqilî di ser delîtêt neqlî ra diragirtin.

Belê paşê ew yê zivirî û hatiye ser ‘eqîda Ehmedê kurê Henbelî (rahîmehullah) anku ‘eqîda Ehlê Sunnet û cema‘etê.

Eve Ebû’l Hesenê-Eş‘erî bi xwe di kitêba xwe da; ewa ku bi navê “El-Îbane ‘an usuli’d-diyane” da dibêjît: “Hêdî ji nihe wê ve, di derbara ‘eqîdê da; ez jî ‘eynen wê dibêjim ya ku serokê Ehlê Sunnet û cema‘etê anku îmam Ehmedê kurê Henbelî (rahîmehullah) gotî.

Qet çu têkilî û peywendiya Ebû’l Hesenê-Eş‘erî bi vê ‘eqîdê ve ewa ku dibêjinê: ‘Eqîda Eş‘eriya nîne û ne ma ye. Çunku wî bi xwe anku Ebû’l Hesenê-Eş‘erî (Xudê jê razî bît) ev ‘eqîda batil, ya ku me berî nihe behsê wê kirî û gotî ya redkirî û qet qebûl nekirî ye.

Divêt, vê jî bizanîn; bahra pitir ji ‘eqîda Eş‘eriya ya ji bîr û baweriyêt Mu‘tezila û bîr û baweriyêt Mu‘teziliya jî, ji bîr û baweriyêt Cehmiya yêt hatîne wergirtin û paşê ew yêt jêk cuda bîn.

# EV E NAVÊ HİNDEKA Jİ WAN TAÎFE Û FİRQÊT XELET Û XİRHAYÎ YE

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَعَلَى اللَّهِ قَصْدُ السَّبِيلِ وَمِنْهَا جَائِرٌ ۚ وَلَوْ شَاءَ لَهَدَاكُمْ أَجْمَعِينَ

“Aşkira kirna rêka heq û rast hema her karê Ellahu Te‘ala bitinê ye. Gelek rêkêt dî jî yêt heyn belê ew hemî dixwahr û çepin (û dixelet in). Heke Ellahu Te‘ala hezkirba da hewe hemyan pêk ve gehînîte ser rêka heq û rast.”[916]

Xudê Te‘ala dibêjît:

كَذَٰلِكَ يُبَيِّنُ ٱللَّهُ لَكُمْ ءَايَٰتِهِۦ لَعَلَّكُمْ تَعْقِلُونَ

“Eha herhosa Ellahu Te‘ala ayetêt xwe (hukum û ehkamêt dînê xwe) bo hewe rohn û aşkira diket; da ku hûn aqilê xwe bidene şolî û tê bigehin (û pê ‘emel biken). ”[917]

Eve navê hindeka ji wan taîfe û firqa ye; ewêt ku ‘eqîda Ehlê- Sunnet û cima‘etê, ‘eqîda Selefêt salih anku ya Sihabî, tabi‘î û tabi‘êt tabi‘iya li ber ummetê tarî û alozkirî û heta evroke jî hêj dûvelankêt wan yê tarî û aloz diken û yê jehra xwe; wan fikir û bîr û baweriyêt xwe; ewêt ku dirizî û batil yê li nav Busulmana belav diken!

Belê ehlê Tewhîdê; anku îmandarêt hişyar, her dem û gavê êk êk e hemî hîle û pîlanêt wan bi serê wan da dipelixînin û yê wan rûreş û şermizar diken li hemî ‘erda.

Îmandarêt hişyar her bi şev û roj bêrawestan yê ‘eqîda Ehlê- Sunnet û cima‘etê; anku ‘eqîda Selefêt salih bo xelk û ‘alemê dibêjin û yê rohn aşkira diken.

---

916 Sûreta Nehl 9
917 Sûreta Beqere 242

Ya Rebbî! Tu bereketê bêxe ‘îlm û zanîna wan û Tu her wan sitare û muhafize bike ji şer û zerera hemî taxut, zalim û xirabkaran. Amîn

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَوْ شَاءَ رَبُّكَ لَجَعَلَ النَّاسَ أُمَّةً وَاحِدَةً وَلا يَزَالُونَ مُخْتَلِفِينَ إِلَّا مَنْ رَحِمَ رَبُّكَ وَلِذَلِكَ خَلَقَهُمْ وَتَمَّتْ كَلِمَةُ رَبِّكَ لَأَمْلأَنَّ جَهَنَّمَ مِنَ الْجِنَّةِ وَالنَّاسِ أَجْمَعِينَ

“(Ey Muhemmed!) Nê heke Rebbê te hezkirba, Ew da mirovan hemyan pêk ve kete êk ummeta bitinê (anku êk milet û xudanêt êk dînî), belê ew hema her berdewam li gel êk yêt îxtîlafê da û ne wekî êkin û wekî êk jî nabin. Belê, hema ew têne; ewêt ku Rebbê te rehm pê birî. Her ji ber hindê jî Ellahu Te‘ala ew yêt xuliqandîn û dayn û gotina Rebbê te; ewa ku Wî emir pê dayî her dê bi cih êt; “Bi sûnd, Ez dê Cehnemê ji ecine û mirovan tijîkem.”[918]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا تُغْنِي الْآيَاتُ وَالنُّذُرُ عَنْ قَوْمٍ لَا يُؤْمِنُونَ

“Erê ma ayet û tirstêdan dê çî fayde û mefayî dene wan; ewêt ku îman û baweryê naînin!”[919]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ الَّذِينَ حَقَّتْ عَلَيْهِمْ كَلِمَتُ رَبِّكَ لَا يُؤْمِنُونَ وَلَوْ جَاءَتْهُمْ كُلُّ آيَةٍ حَتَّى يَرَوُا الْعَذَابَ الْأَلِيمَ

“(Ey Muhemmed!) Bê şik ewêt gotina Rebbê te (anku ‘ezaba wî) li ser fer û pêtivî bî, qet hêdî ew îman û

918 Sûreta Hud 118
919 Sûreta Yûnus 101

baweryê naînin, heke xwe hemî mu‘cîze jî bo wan bên, ew îman û baweriyê naînin heta ku ew ‘ezaba dijwar ya biêş û jan nebînin.”[920]

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلْ كُلٌّ يَعْمَلُ عَلَىٰ شَاكِلَتِهِ فَرَبُّكُمْ أَعْلَمُ بِمَنْ هُوَ أَهْدَىٰ سَبِيلًا

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje mirovan: “Nê hema her êk ji hewe li pêy halê xwe şol û karêt xwe diket. Vêca hema her Rebbê hewe çêtir dizanît ka rêka kê ji hewe ya heq û rastir e.”[921]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِنَّهُمْ لَيَصُدُّونَهُمْ عَنِ السَّبِيلِ وَيَحْسَبُونَ أَنَّهُمْ مُهْتَدُونَ

“Bê şik ew berê wan ji rêka heq û rast didete paş û ew bi xwe jî we hisab diken ku ew yê li ser rêka rast û hidayetê(!).”[922]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَا تَتَّبِعُوا أَهْوَاءَ قَوْمٍ قَدْ ضَلُّوا مِنْ قَبْلُ وَأَضَلُّوا كَثِيرًا وَضَلُّوا عَنْ سَوَاءِ السَّبِيلِ

“Hûn bi dûv hewa û hewesê wî qewmî nekevin, ewêt ku berî nihe ji rêka heq derketîn û xirhayîn, bê şik wan gelek jî li gel xwe yêt xirandîn û yêt serda birîn û ew bi xwe jî yêt xirhayîn û dûrketîn ji rêka heq û rast.”[923]

920 Sûreta Yûnus 96-97
921 Sûreta Îsra 84
922 Sûreta Zuxrif 37
923 Sûreta Maîde 77

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَنْ أَضَلُّ مِمَّنِ اتَّبَعَ هَوَاهُ بِغَيْرِ هُدًى مِّنَ اللَّهِ إِنَّ اللَّهَ لَا يَهْدِي الْقَوْمَ الظَّالِمِينَ

“Erê ma kî ji wî yî şaş û xirhayîtire; yê ku bi dûv hewa û hewesê xwe dikevît bêyî ku wî rêberek hebît ji layê Ellahu Te‘ala ve. Bê şik Ellahu Te‘ala, qewmê zalim û zordar naînîte ser rêka heq û rast; hîdayetê.”[924]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلا تَلْبِسُوا الْحَقَّ بِالْبَاطِلِ وَتَكْتُمُوا الْحَقَّ وَأَنْتُمْ تَعْلَمُونَ

“Hûn heqiyê di nav batilî hilneken û hûn baş bizanîn jî heqiyê neveşêrin.”[925]

Xudê Te‘ala dibêjît:

أَفَتُؤْمِنُونَ بِبَعْضِ الْكِتَابِ وَتَكْفُرُونَ بِبَعْضٍ

“Erê ma hûn îman û baweriyê bi hindekê ji kitêbê tînin û hindekê jî înkar diken?”[926]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمِنَ النَّاسِ مَن يَقُولُ آمَنَّا بِاللَّهِ وَبِالْيَوْمِ الآخِرِ وَمَا هُم بِمُؤْمِنِينَ

“Hindek ji mirovan yêt heyîn, ew dibêjin: “Me, îman û bawerî ya înandî bi Ellahu Te‘ala û roja qiyametê” belê ne we ye; qet ew ne di-îmandar in (wa îman û bawerî neînandiye).”[927]

924 Sûreta Qeses 50
925 Sûreta Beqerq 42
926 Sûreta Beqerq 85
927 Sûreta Beqere 8

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِذَا قِيلَ لَهُمْ آمِنُواْ كَمَا آمَنَ النَّاسُ قَالُواْ أَنُؤْمِنُ كَمَا آمَنَ السُّفَهَاء أَلَا إِنَّهُمْ هُمُ السُّفَهَاء وَلَكِن لاَّ يَعْلَمُونَ

“Li demê bo wan tête gotin: “Dê hûn jî werin îman û baweriyê bînin, her wekî îmandaran îman û bawerî înandî” ew dibêjin: “Erê ma em jî bên îman û baweriyê bînîn! Her wekî ewêt; behîme û sahêlk îman û bawerî înandî?” Hûn baş bizanin, hema her ew bi xwe ne yêt eblehe û bêaqil belê ew bi xwe na heshin û nuzanin!”[928]

Xudê Te‘ala dibêjît:

أُوْلَئِكَ الَّذِينَ اشْتَرُوُاْ الضَّلاَلَةَ بِالْهُدَى فَمَا رَبِحَت تِّجَارَتُهُمْ وَمَا كَانُواْ مُهْتَدِين

“Eha ew minafiq, ew ew in; ewêt ku bo xwe pêş îmanê ve delalet û kafirî kirî, qet vê tucareta wan çu kar nekir û ew bi ser rêka heq û rast hilnebîne û hilnabin jî.”[929]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَجَادَلُوا بِالْبَاطِلِ لِيُدْحِضُوا بِهِ الْحَقَّ فَأَخَذْتُهُمْ ۖ فَكَيْفَ كَانَ عِقَابِ

“Û ew yê ji neheqî cedel û cirûbir diken; da ku heqiyê berzebiken û batilî bîne şûnê, paşê Min ew girtin. Vêca tu berê xwe bidê ka ‘ezaba Min ya çewa bû, û Me çî înande serê wa!”[930]

928 Sûreta Beqerq 13
929 Beqere Sûreta16
930 Sûreta Xafir 5

Xudê Te'ala dibêjît:

مَا يُجَادِلُ فِي آيَاتِ اللّٰهِ إِلاَّ الَّذِينَ كَفَرُوا

“Nê hema her yêt kafir bitinê di derheqa ayetêt Ellahu Te'ala da cedel û cirûbirê diken.”[931]

Xudê Te'ala dibêjît:

أَفَنَجْعَلُ الْمُسْلِمِينَ كَالْمُجْرِمِينَ مَا لَكُمْ كَيْفَ تَحْكُمُونَ

“Erê ma (li roja qiyametê) Em dê Busulmana wekî gunehkarêt sûçdar lê keyn û hisab keyn, haşa? hewe çi ye, ma çewa hûn hukmî diken?”[932]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَلاَ تَحْسَبَنَّ اللّٰهَ غَافِلاً عَمَّا يَعْمَلُّ الظَّالِمُونَ إِنَّمَا يُؤَخِّرُّهُمْ لِيَوْمٍ تَشْخَصُ فِيهِ الأَبْصَارُ

“(Ey Muhemmed!) Tu we hizir neke ku Ellahu Te'ala yî xafile ji wî karî yê ku ew zalim û zordar diken. Bê şik Ew yê wan vedhêlît bo rojeka we; ku çavêt wan têda dê zil û beq radwestin (ji tirsa da).”[933]

Xudê Te'ala dibêjît:

وَكَذٰلِكَ نُفَصِّلُ الْآيَاتِ وَلِتَسْتَبِينَ سَبِيلُ الْمُجْرِمِينَ

“Eha herhosa Em yê ayeta (hukum û ehkamêt dînî) bidûr û dirêjî rohn û aşkira dikeyn, da ku rêka gunehkarêt sûçdar baş diyar û aşkira bît; (da hûn xwe ji wan biparêzin û sitare biken.”[934]

---

931 Sûreta Xafir 4
932 Sûreta Qelem 36
933 Sûreta Îbrahîm 42
934 Sûreta En'an 55

Eve navê hindeka ji wan firqêt batil û xirhayî ye; ewêt ku ji hemyan di dixrabtir; ewêt ku heta evroke jî dirêjiyê didene heyîna xwe, ewêt ku bîne egera delalet û xirhana gelek mirova di nav ‘alema Îslamê da; çûnku ew ne li ser rêk û bîr û baweriya Ehlê Sunnet û cema‘etê ne!:

Eve bo nimûne wekî; Şî‘a ku dibêjinê Rafidî, Xaricî, Cebrî (Cehmî), Mu‘tezilî, Murcîe û Qederiya …

Ev firqe/taîfe û birêt batil û xirhayî anku Rafidî, Xaricî, Cehmî, Qederî û Murcîe û dûvelankêt wan sebeb û egera mezinin bo peydabîniya hemî new‘êt bîd‘a û rêkêt xelet di nav ummetê da.

Ev e her wekî, Şeyxulîslam Îbin Teymiyê Herranî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Di aşkirakirna delaleta van bir û firqêt kevin da hindîku em pêheshayn; qet kesekê wekî van her du îmamêt Busulmana; ewêt ku ji hemî ‘alima û zana bi qedirtir û xudan rûmet li ser wan ne axiftîne; anku Yusufê kurê Esbatî û paşê di dû wî ra jî ‘Ebdullahê kurê Mubarek (Xudê ji wan her duka razî bît), wan her digot:

(‘Eslê hemî bîd‘a ji van herçar firqêt jêrî ye; (anku hemî bîd‘e ji van firqa yêt peyda bîn): Rafidî, Xaricî, Qederî û Murcî ya.

Carekê êkî gote kurê Mubarekî; Gelo tu bo Cehmiya çî dibêjî? Wî cuwab da û got: Bê guman ew ne ji ummeta Muhemmedî ne-selat û selam li ser bin-.

Wî her digot: Em dişêyin hinde gotina ji cuhiya yan ji Fila wergirîn û neqil biken, belê em neşêyn çu gotina ji Cehmiyya wergirîn û neqil bikeyn.[935]

935 Ji kitêba eş-Şerî‘e Acirî

## ŞÎ‘E; RAFİDÎ

Xudê Te‘ala dibêjît:

سَأَصْرِفُ عَنْ آيَاتِيَ الَّذِينَ يَتَكَبَّرُونَ فِي الأَرْضِ بِغَيْرِ الْحَقِّ

“Ez, dê hema berê wan ji ayetêt xwe guhorim; ewêt ku xwe li ser rûyê ‘erdî bi neheqî mezin kirî û diken.”[936]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِذَا قِيلَ لَهُمُ اتَّبِعُوا مَا أَنزَلَ اللّهُ قَالُواْ بَلْ نَتَّبِعُ مَا أَلْفَيْنَا عَلَيْهِ آبَاءنَا أَوَلَوْ كَانَ آبَاؤُهُمْ لاَ يَعْقِلُونَ شَيْئاً وَلاَ يَهْتَدُونَ

“Li demê bo wan tête gotin: “Dê hûn jî werin bi dûv wê wehyê bikevin; ewa ku Ellahu Te‘ala hinartiye xwarê (anku Qur’anê)”, wan digot: “Nexêr, em hema her dê bi dûv wî tiştî kevîn; yê ku me bab û kalêt xwe li ser dîtîn!” Pa heke bab û kalêt wan di çu negehin û bi ser rêka heq û rast jî hilne bibin (hîngê halê wan dê çibît)?!”[937]

Xudê Te‘ala dibêjît:

فَأَمَّا الَّذِينَ فِي قُلُوبِهِمْ زَيْغٌ فَيَتَّبِعُونَ مَا تَشَابَهَ مِنْهُ ابْتِغَاءَ الْفِتْنَةِ وَابْتِغَاءَ وتَأْوِيلِهِ

“Vêca ewêt şik û meyla xirab di dilê wan da hey, ew her hema li dûv wan ayeta diçin, ewêt ku me‘na wan ya tarî û dişubhine êkûdu, ev e bo peydakirna kudîret û fitnê û da ku ew li dûv dilê xwe me‘na wan ayeta biguhorîn û çeqa jê biben.”[938]

936 Sûreta E‘raf 146
937 Sûreta Beqere 170
938 Sûreta Alî ‘Îmran 7

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَنْ يُشَاقِقِ الرَّسُولَ مِنْ بَعْدِ مَا تَبَيَنَ لَهُ الْهُدَى وَيَتبعْ غَيْرَّ سَبيلِّ الْمُؤْمِنِينَ نُوَلِهِ مَا تَوَلَى وَنُصْلِّهِ جَهَنَمَ وَسَاءَتْ مَصِيرّاً

“Heçî kesê piştî rêka heq û rast bo aşkira, vêca piştî wê ew rabît dujminatiyê li gel Pêxemberî biket û ji bilî rêka îmandaran bo xwe bi dûv rêkeka dî bikevît, Em jî dê berê wî deyne wê rêkê; ya ku wî berê xwe dayê û Em dê wî beyne Cehnemê û ew der cih û warekî gelekî xirab û kirêt e.”[939]

Xudê Te‘ala dibêjît:

هُمُ الْعَدُوُّ فَاحْذَرْهُمْ قَاتَلَّهُمُ اللَّهُ أَنَّى يُؤْفَكُونَ

“Hema her ew in neyar û dujmin, vêca tu yî hişyar be tu xwe ji wan biparêze û sitare bike. Ellahu Te‘ala wan bikujît. Erê, ma çewa ew berê xwe ji heqiyê diguhorin!”[940]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا لَا تَتَّخِذُوا عَدُوِّي وَعَدُوَّكُمْ أَوْلِيَاء تُلْقُونَ إِلَيْهِم بِالْمَوَدَّةِ وَقَدْ كَفَرُوا بِمَا جَاءكُم مِّنَ الْحَقِّ

“Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Hûn çû caran dujminê Min û dujminê xwe bo xwe nekene dost û piştevan. Belê, ev e hûn yê lezê li viyana wan diken, bê şik wan îman û bawerî ne înandiye bi wê rast î û heqiyê (anku wê Qur’anê) ya ku bo hewe hatî.”[941]

Carekê pirsyar ji Cem‘iyeta Ehlê-Sunnet û Sehabiya tête kirin: Erê, ji ber çî Ş‘i‘e bi vî navê anku bi navê Rafidî hatîne nav kirin?

939 Sûreta Nîsa 115
940 Sûreta Munafîqun 4
941 Sûretsa Mum’tehîne 1

Wa anku hey'eta wê Cem'iyetê cewab da û got: Ji ber vê hindê ew bi vî navê Rafidî yêt hatîne nav kirin: Carekê ew diçine huzûra Zeydê kurê 'Eliyê kurê Huseynî (Xudê ji wan hemyan razî bît), wan gote wî: Heta ku tu xwe berînekey ji Ebu Bekrî û 'Umerî, em xwe nadeyne li gel te û nabîne tabi'êt te, wî gote wan; nê ew her duk anku Ebu Bekrî û 'Umer (Xudê ji her duka razî bît) hevalêt bapîrê minin, anku Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser bin-qet'iyen; ez pişta wan bernadem, wan gotê: Madem we ye, em jî te REFD û red dikeyn, eha ji ber vê hindê navê Rafidî yê ketiye ser wan û dibêjne wan Rafidî, û ewêt mubaye't li gel Zeydê kurê 'Eliyê kurê Huseynî kirî (Xudê ji wan razî bît) û bîne tabi'êt wî, ew bi navê zeydî hatne nav kirin.

Eve çûnku wan bera'eta xwe ji îmametiya Ebu Bekrî û 'Umerî (Xudê ji wan razî bît) ya dayî, xelîfetiya wan qebûl nekiriye ji ber hindê dibêjne wan Rafidî anku Ş'i'e.

Hîndekêt dî dibêjin çûnku wan dîn qebûl nekiriye ji ber wê hindê dibêjne wan Rafidî anku Ş'i'e.[942]

Şî'e ewêt ku navê wan biye Rafidî, 'eqîde; bir û baweriya wan geleka ya şaş û xelete, ew ji 'eqîde; ji bir û baweriya dînê Îslamê di bêbahrin û didûr in.

Şeyxulîslam Îbin Teymiyê Herranî (Xudê jê razî bît) dibêjit: (Rafizî anku Şî'e qewmeke wan çu aqil nîne û çu delîlêt neqlî yêt rast jî wan nînin ku ew xwe pê ragirin).[943]

Îmam Ibin Qeyyîm el-Cuzî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Şî'e yêt bîne şerm û 'ar bo zuriyeta bab Ademî (silav li ser bin); nê mirovêt bi aqil hemî bo xwe yarî û tirana bi wan diken).[944]

942 Ji kitêba Fireq mu'asire
943 Tebeqat el- Henabîle
944 El-îbanetusuxra

Ehmedê kurê Henbel (Xudê jê razî bît) dibêjit: Rafizî anku Şî‘e qet ji çu rexan  ve bi çu tiştî ji dînê Îslametiyê nîn; (ye‘nî çu ‘elaqeta wan li gel dînê Îslamê nîne û nema ye).[945]

Îmam Şafi‘î (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Min qet kesek ji ewêt ku ji dînî dixirhayî bo dana şehdezûriyê ji Şî‘a xirabtir nedîtî ne).[946]

Îmam Malik (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Ew kesê xebera bêjîte sihabiyêt Pêxemberê Xudê-selat û selam li ser binbo wî kesî çu pişk yan jî yê gotî: Bo wî çu nesîb di dînê Îslamê da nîne).[947]

Çî gava li nik îmamê Ebu Henîfe (Xudê jê razî bît) behsê Şî‘a di hate kirin wî digot: (Ew kesê di kafiriya wan da bi şk bikevît, ew jî hema her wekî wan kafire).[948]

Sem‘an (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Gotina hemî ‘alimêt ummetê êk e li ser kafiriya şî‘êt îmamî; çûnku ew bawer diken û dibêjin: Sihabiyêt Pêxemberê Xudê-selat

û selam li ser bin-piştî wî hemî yêt xirhayîn û kafir bîn, hema çendek têne. Ev e di dilê xwe da şî‘êt îmamî ji hemî şî‘a di baştir û çêtir in jî.[949]

Şeyxulîslam Îbin Teymiyê Herranî (Xudê jê razî bît) dibêjît; el-Qadî yê gotî: (Ew kesê pavêjîte ‘Aîşayê (Xudê jê razî bît) û di derheqa namûsa wê da kirêt baxivît, ew pûte bi wan ayeta neket; ewêt ku Xudê Te‘ala di derheqa beraeta wê da hinartîne xwarê, bêxîlaf ew kes kafire).[950]

945 Eqwal ehlîl-‘îlim ji mewqi‘a seyd el-fewaîd
946 Es-Sunne îmam Ehmed
947 Es-Snnuet Xelal
948 Eqwal el-Eîmetul- Erbe‘e
949 Ji kitêba Ensab
950 Mînhac eS-sunne

Herdîsa Şeyxulîslam Îbin Teymiyê Herranî (Xudê jê razî bît) dibêjit: Rafizî anku Şî'e kerêt Cuhyane; çûnku Cuhî bo hilkirna agirê her fitneka hebît li wan suwar dibin).[951]

'Abdullah Bekê Urmiyî (Xudê jê razî bît), zanayekî hişyar bû, carekê wî bo me behsê 'eqîda Şî'a dikir, wî di nav gotinêt xwe da got: Li zemanê şahê Îranê Rîda Pehlewî, 'Alimekî mezin li Mahabadê hebû, navê wî 'alimî Muhammed Merduxî bû, êk şikayeta wî li dev şahî anku Rîda Pehlewî diket, ew wî digirin û di bene bajêrê Tehranê huzûra şahî, şah dibêjîtê: Seyda! Me yê zanî ku tu dibêjî: Şî'e kafir in, Seydayê Muhammed Merduxî gotê: Nexêr, min we negotiye, şahî gotê: Pa tu çî dibêjî?

Seydayê navdar Muhammed Merduxî gotê ez dibêjim: Yê ne bêjît: Şî'e kafir in ew jî wekî wan kafire, şahî gotê seyda; ev e gotineka gelek mezin e, ez dê te deme mehkemê. Seydayê Muhammed Merduxî (Xudê jê razî bît) gotê: Serçavan ezî hazirim.

Şah radibît geleka ji 'alim û zanayêt mezhebê Şî'egeriyê kom diket, da ku ew 'alim û zanayêt wan li gel Seydayê navdar Muhammed Merduxî bikevine muzakerê; li ser bîr û baweriyêt Mezhebê Şî'egeriyê, şahî gote wan 'alim û zanayêt Şî'a divêt, hûn bi delîl û îsbat cewaba vî seydayê Sunnî biden.

Seydayê Muhammed Merduxî (Xudê jê razî bît), destpêkir; wî bi ayetêt Qur'ana Pîroz û hedîsêt Pêxemeberî -selat û selam li ser bin-yêt rast û durust şaşî û xeletiyêt wan êk êk e û li dûvêk aşkira kirin û gotin, şah jî hema yê guhê xwe didetê.

---

951 Mînhac eS-sunne

Welhasil, li dûmahîkê bo şahî bi qena‘eteka kamil baş aşkira bû; ku mezhebê Şî‘etiyê ji serî heta binî mezhebekî bêbinîşe ye û yî batile.

Dibêjin şahê Îranê anku Rîda Pehlewî piştî ku li wê muzakerê heqîqet bo aşkirabî, wî xwe ji nav mezhebê Şî‘atiyê yê avêtî û ew yê biye Sunnî.

Haşa bi devê wan bît, anku Şî‘e dibêjin: Ebubekr û ‘Umer, ‘Usman, hemî Mihacir û Ensarî û heta hemî sihabiyêt Pêxemberî-Xudê ji wan hemyan razî bît-piştî Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yêt murted bîn anku yêt kafir bîn, îleh sê kes bitinê têne, ev e her wekî di tefsîra ‘Eyaşî û di gelek kitêbêt wan jî da hosa ya hatî.

Ew her sê kesêt ew bi îman û baweriya xwe dibêjin ji Sihabiya kafir ne biyne, ew behsê: Mîqdad, Ebu Zer û Selmanê farisî diken-Xudê ji wan razî bît-.

Heta evroke jî Şî‘e hemî peyrew û tabi‘êt Ehlê Sunnet û cema‘etê anku hemî Selefêt salih murted û kafir dizanin û dibînin, heta hindek ji zanayêt Şî‘a dibêjin; Pêxemberî -selat û selam li ser bin- Pêxemberîna xwe bi timamî bicih ne înandiye? Piştî wî îmamêt me yêt rabîn da ku Pêxemberîniya wî piştî wî timam biken!

Şî‘e taîfe û firqeyeka batil û xirhayî ne; ew ne ji Ehlê-Sunnetê û cima‘etê ne; ew ehlê delaletê ne, wan di dirêjiya tarîxa Îslamê da her kîndarî û neyariya Ehlê Sunnet û cema‘etê ya kirî û yê diken jî.

Nê ew anku Şî‘e bi îman û baweriya xwe dibêjin; Qur’an ya kême û kêmasî ya di nav Qur’anê da hey û ew sunnetê jî hema kêmeka ji hedîsêt Pêxemberî qebûl diken û ew Buxarî û Muslimê ji bînî red diken û qet qebûl naken.

‘Alim û zanayêt wan; yêt vî zemanî gelek cara teqiyê diken; ew xwe vedşêrin, belê hemî ‘alim û zanayêt wan yêt kevin; ewêt ku dimu‘teber li dev wan dibêjin: Mirovêt sunnî (anku jibilî wa) hemî Busulman kafir in û dinecisin; heta ew dibêjin: Hemî sunnî ji Cuhî, File û Mecusiyan di herimî û pîstir in û ew ruh û canu, xûn, mal û namûsa hemî mirovêt Ehlê Sunnet û cema‘etê bo xwe helal dibînin û dizanin! Berê xwe bidene kitêbêt zanayêt wan, bo nimûne, ev e wekî: Muhammedê kurê ‘Eliyê kurê Babeweyhiyê Qummî, Mîrza Hesen el-Îhqaqiyî û Nî‘metullah eL-Cezayirî da ku hûn ‘ecxêbiya bibînin û wan baş binyasin, ka ew çend dikafir in.

Şî‘atî koka penceşêrê ye ketiye di nav cergê ‘alema Îslamê da, ew maka hemî direw û bid‘a ne, ew her bi teqiye û direwêt xwe berevaniyê ji mezhebê xwe yê batil diken, ji ber vê hindê ew xwe bikevne nav şîrkê yan jî kufrê qet li guhê wan nîne!

Qet çû caran wan xwe nedaye paş û texsîrî nekiriye di girêdana hîle û pîlanêt şeytanî da li gel kafiran û dujminêt dînê Îslamê li hemberî Ehlê Sunnet û cema‘etê, nê tarîxa wan bi xwe ya kevn û nû xweş şahide li ser vê hindê.

Heta ew evroke jî ew yê li gel kafiran û dujminêt dînê Îslamê şerê li gel Ehlê Sunnet û cema‘etê diken li gelek cihan di dinyayê da. Welhasil, Şî‘e anku Rafizî firqeyeka xirhayî ye, ew di nav delaletê da yêt xendiqîn û yêt rûreş biyîn.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَا يَحِيقُ الْمَكْرُ السَّيِّئُ إِلَّا بِأَهْلِهِ

“Nê hîle û pîlanêt xirab û xelet hema her xudanê xwe dihingêvên û wan rûreş diken.”[952]

952 Sûreta Fatir 43

# XEWARİC

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَجَادَلُوا بِالْبَاطِلِ لِيُدْحِضُوا بِهِ الْحَقَّ فَأَخَذْتُهُمْ فَكَيْفَ كَانَ عِقَابِ

“Û wan ji neheqî cedel û cirûbir dikir; da ku heqiyê berzebiken û batilî bîne şûnê, paşê Min ew girtin. Vêca tu berê xwe bidê ka ‘ezaba Min ya çewa bû, û Me çî înande serê wa!”[953]

Xudê Te‘ala dibêjît:

مَا يُجَادِلُ فِي آيَاتِ اللَّهِ إِلاَّ الَّذِينَ كَفَرُوا

“Nê hema her yêt kafir bitinê di derheqa ayetêt Ellahu Te‘ala da cedel û cirûbirê diken.”[954]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَنْ يُشَاقِقِ الرَّسُولَ مِنْ بَعْدِ مَا تَبَيَّنَ لَهُ الْهُدَى وَيَتَّبِعْ غَيْرَ سَبِيلِ الْمُؤْمِنِينَ نُوَلِّهِ مَا تَوَلَّى وَنُصْلِهِ جَهَنَّمَ وَسَاءَتْ مَصِيرًا

“Heçî kesê piştî rêka heq û rast bo aşkira bî dujminatiyê li gel Pêxemberî biket û ji bilî rêka îmandaran bo xwe bi dûv rêkeka dî bikevît, Em jî dê berê wî deyne wê rêkê ya ku wî berê xwe dayê û Em dê wî beyne Cehnemê û ew der cih û warekî gelekî xirab û kirêt e.”[955]

953 Sûreta Xafir 5
954 Sûreta Xafir 4
955 Sûreta Nîsa 115

Xudê Te'ala dibêjît:

أَفَمَن كَانَ عَلَى بَيِّنَةٍ مِّن رَّبِّهِ كَمَن زُيِّنَ لَهُ سُوءُ عَمَلِهِ وَاتَّبَعُوا أَهْوَاءهُمْ

"Erê ma yê delîlekî aşkira ji layê Rebbê xwe ve hebît, erê ma ew wekî wî kesiye ye; ewêt ku kar û 'emelêt wî yêt xirab bo hatîne xemilandin û bi dûv hewa û hewesê xwe ketîn?"[956]

Ew firqa jirêve ji ber bîd'êt xwe ji nav cima'eta Ehlê Sunnet û cema'etê cuda bî û derketî, ew ev bir û firqa he ye; ewa ku dibêjnê Xaricî.

Hewaric jirêve hemî li gel îmamê 'Elî bûn (Xudê jê razî bît) û ew 'eskerê wî bûn, ew bi xîlafeta îmamê 'Elî jî di razî bûn, heta li şerê Cemelê jî ew li pişt îmamê 'Elî bûn, wan li hemberî Mu'awiyeyî (Xudê jê razî bît) her destek dida îmamê 'Elî, heta mesela qebûlkirina tehkîmê; anku heta ku li sala 657tî m-37tî h, li ser girê Sifînê; Ew ê ku nêzîkî bajêrê Sifînê ye, li ber rexê Furatî li Suriyê, li wêrê 'eskerê îmamê 'Elî xelîfê Busulmana û Mu'awiyeyî waliyê Şamê (Xudê ji wan her duka razî bît) hatîne hemberî êkûdu bo şerî.

Di hîngê da hindeka di nav 'eskerê Mu'awiyeyî da Qur'an bi serê rimêt xwe ve rakir û bilind kir; anku em sulhê di xwazîn, piştî şerê Sifînê, îmamê 'Elî qebûlkir ku sulhe bête kirin, ji rexê wî ve Ebu Musayê Eş'erî û ji rexê Mu'awiyeyî jî 'Emrê kurê 'Asî (Xudê ji wan her duka razî bît) her duk pêkve rûniştine xwarê; da ku çareseriyekê bo pêk înandina vê meselê bibînin û çêken.

Hewarica ne razîbîniya xwe li ser vê hindê diyarkir, wan got: Hukum hema her hukmê Xudê Te'ala ye, Îmamê 'Elî cewaba wan da û got:

956 Sûreta Muhemmed 14

Ev e gotineka heqe belê, mira da wan pê batile.

wan got: Îmamê ‘Elî û hindî li gel wî, ew hemî pêkve haşa kafir in, çûnku wan hukmê van her du zelama qebûlkir û wan bi hukmê Qur’anê nekir.

Piştî hîngê Hewaric ji nav ‘eskerê Îmamê ‘Elî derketin û cuda bin hejmara wan nêzîkê heşt hizar (8000) kesa bû, ew çûne nêzîkî bajêrê Kufayê; wî cihî yê ku dibêjnê Herewra li wêrê kom bin. Îmamê ‘Elî (Xudê jê razî bît) rabû ‘Ebdullahê kurê îmamê Êbas (Xudê jê wan her duka razî bît) birêkire nav wan, ‘Ebdullahî gelek şîret û nesîhet li wan kirin, wî nêzîkî çarhizar (4000) kes ji wan veqetandin û ew zivirandine Kufayê û wan xîlafeta Îmamê ‘Elî qebûlkir ûı pê razî bin.

Belê ew çarhizarêt (4000) mayîn, wan xwe li ser rik û ‘înada xwe şir kir; wan dest avêtê gotinêt bêşirî‘et gotin û kiryarêt kirêt kirin.

Îmamê ‘Elî (Xudê jê razî bît) mecbûr dibît, ew radibît bi ‘eskerê xwe ve li wî cihê dibêjinê: Nehrewan şerî li gel wan diket, hindî di vî şerî da hatîne kuştin, ew hatne kuştin û yêt mayîn ew jî direvin; tera û bera dibin.

Ewêt ku piştî wî şerî ji Hewarica mayne sax jî ew li zemanê ‘Umerê kurê ‘Ebdul‘ezîzî (Xudê jê razî bît) yêt teslîm bîn û hatîne ser rê.

Şeyxulîslam Îbin Teymiyê Herranî (Xudê jê razî bît) di Mecmu‘ul- Fetawa xwe da dibêjît: ‘Umerê kurê ‘Ebdul‘ezîzê xelîfê Emewîya (Xudê jê razî bît), gazî giregirêt Qedriya û Xewarica kir, li gel wan kete munazerê heta ku heqî bo wan aşkira bî û wan heqî qebûlkir û pê qaîl bûn. Şeyxulîslam Îbin Teymiyê Herranî (Xudê jê razî bît) dibêjît: wan li ser destê ‘Umerê kurê ‘Ebdul‘ezîzê (Xudê jê razî bît) tobekir.

Belê ew e ji wê rojê heta evroke Hewaric yê xwe bi gelek nava û şikila diguhorin û bêrawistan ew yê neyaretiya Ehlê-Sunnet û cima‘etê diken, heta ez dişêm bêjim; ev Hewaricêt nû anku yêt nihe ji gelek rexan  ve ji Hewaricêt kevin dixirabtirîn; çunku dujminêt Îslamê ji hemî rexan ve li bin kirasê wan û bi navê wan yê hûcrûm dikene ser Ehlê-Sunnet û cima‘etê li hemî rexêt dinyayê û ew yê destêt xwe bo xirabkirnê dirêj dikene Qur’anê û sunnetê û ew yê bi hemî rêka jehra xwe li nav ummetê belav dken.

Eve her wekî Şeyxulîslam Îbin Teymiyê Herranî (Xudê jê razî bît) di Mecmu‘ul- Fetawa xwe da dibêjît:

‘Eslê xirhana van Hewarica ji ber bîr û baweriyêt wan ne, çûnku ew dimuxalifin li gel Ehlê-Sunnet û cima‘etê û ji rêka hîdayetê didûr in û ew yêt xirhayîn û ketîne nav delaletê.

Divêt, em wesa tênegehîn ku Hewaric hema li zemanê berê da peyda bibin û hind, dûndeha wan; ewêt ku li dewsa wan diçin; li ser bîr û baweriyêt wan ne mayîne nexêr; we nîne, heta Decal radi bît, destekek ji wan her di nav ummetê da dê dimewcud bin, heta ew dê li gel Decalî şerê Busulmana jî ken.

Pêxemberê Xudê Te‘ala -selat û selam li ser bin- dibêjît:

(Ew anku Xewaricî) dê li tîrekê derkevin, heta ku yê dûmahîkê ji wan dê li gel Decalî rabît û derkevîte meydanê).[957]

‘Ebdullahê kurê ‘Umerî (Xudê ji wan her duka razî bît) ew dibêjît; min ji Pêxemberê Xudê Te‘ala -selat û selam li ser bin- yê guhlê bî, wî digot: (Çend taîfek ji wan rabît û peyda bît, divêt, ji nav xelkê bêne rakirin, ew dê ji bîst

957 Îmamê Ehmed, Ebu Dawud

cara pitir rabin û peyda bin, heta ku dê di nav hîle û hereboşiya wan da Decal rabît).[958]

Eve her wekî Pêxemberê Xudê Te'ala -selat û selam li ser bin- di derheqa Xewarica da dibêjît: (Ew dê ehlê Îslamê dikujin, belê ew dê senem perêsa dihêlin; qet xwe haj wan naken, nê heke ez bigehme zemanê wan, ez dê wan kujim her wekî ku çewa kuştina qewmê (Hud Pêxemberî- selam li ser bin- anku 'Ada ya fer û pêtivî bû; li wî demê yê ku ew di hatîne kuştin).[959]

Ev firqa Xewarica bi biryar û qirarêt xwe yêt kevn û nû û bi siyaset û fikir û bîr û baweriyêt xwe; ewêt ku di şaş û xelet, ew ji 'eqîda ehlê sunnet û cima'etê yêt dûr ketîn.

Di derheqa wesfêt Xewarica da, Îmamê 'Elî (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberê Xudê Te'ala -selat û selam li ser bin- yê gotî: (Dûmahîka zemanî qewmek dê rabît didanêt wan dihûrik û aqilê wan yî kêm û ze'îf, gotinêt ew dibêjin ji yêt hemî mirovan di lawtir in; anku ew Qur'anê dixûnin, ew we ji dinî Îslamê dixirhin û derdikevin; her wekî ku ka çewa tîr ji kivanê xwe derdikevît û diçît, îmana wan nagehîte binê gewriya wan, hûn li kîrê bi ser wan hilbibin wan bikujin, nê kuştina wan bo wî kesî yê ku wan dikujît li roja qiyametê xêreka gelek mezin e; çunku ew dê bidijwarî xirabkariyê li ser rûyê 'erdî diken).[960]

Dîsa Pêxemberê Xudê Te'ala -selat û selam li ser bin- behsê wan diket û dibêjît: (Qewmek dê ji nav ummeta min derkevît û rabît; ew dê wesa law û cuwan Qur'anê xûnin, hûn xwandina xwe li ber ya wan bi çu hisab naken, ew dê wesa law nivêjan ken, hûn nivêjêt

958 Elbanî û Ernawutî (Xudê jê wan her duka razî bît) ew dibêjin: Ev Hedîs e ya Hesene
959 Muttefequn 'eleyh
960 Muttefequn 'eleyh

xwe li ber yêt wan bi çu hisab naken, ew dê we rojiya girin hûn rojiyêt xwe li ber yêt wan bi çu hisab naken, ew dê Qur'anê dixûnin, ew we hisab diken ku ew bo wan xêre, nexêr; ew xwandina Qur'anê webale bo wan û guneha wê ya distuwê wan da).[961] 'Usmanê kurê Suheybî (Xudê jê razî bît), ew zar babê xwe dibjît: Îmamê 'Elî yê gotî; Pêxemberê Xudê Te'ala -selat û selam li ser bin- gote min:(Kîj mirov ji hemî mirovêt berahîkê yî xirabtire) min gotê: (Ew ew e yê ku hêştira Salih Pêxemberî -silav li ser bin-serjê kirî. Pêxemberê Xudê Te'ala -selat û selam li ser bin- gote min: (Te rast got) dîsa Pêxemberê Xudê Te'ala -selat û selam li ser bin- gote min: (Kîj mirov ji hemî mirovêt dûmahîkê yî xirabtire) Îmamê 'Elî dibêjît min gotê; ya qasidê Xudê çu zanîna min bi wê hindê nîne, îna Pêxemberê Xudê Te'ala-selat û selam li ser bin-got:(Ew ew e yê ku dê te kujît).[962]

Ew ê Îmamê 'Elî kujtî Ibin Mulcem bû, ew Zelamekî ji Xewarîca bû. Zar Ibin ebî Ewfa (Xudê jê razî bît) ew dibêjît; Pêxemberê Xudê Te'ala -selat û selam li ser binher digot: (Xewarîc seyêt agirê cehennemê ne).[963]

Îmamê Ehmedê kurê Henbel (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Xewaric qewmekî we yî xirabkare, ez pê naheshim û nuzanim ku ji wan xirabtir di dinya yê da çu kesêt dî yêt we dixirabkar hebin).[964]

961 Muslim
962 Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Ev Hedîs e ya Sehîhe
963 Elbanî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Ev Hedîs e ya Sehîhe
964 Es-Sunne ya Xîlalî

## ÇENDEK Jİ BÎR Û BAWERİYÊT XEWARÎCA

Ew tiştê Hewarica xwe pê biriye hîlakê, hêj peyrew û tabi'êt wan ji bîr nekiriye, anku Tehkîm, ew heta evroke jî yê pê 'emel diken, ew bi wê bîr û baweriya xwe ya şaş û xelet qebûlnaken ku mirov bi xwe sulh û selahetê di navbeyna xwe da biken û êkûdu pêkbînin.

-Ew dibêjin: Yê sulh û selahetê û pêk înandina bi mirovan qebûlbiket ew kafire.

Berê xwe bidenê ew yê çewa van ayatêt Qur'ana Pîroz û hedîsêt Pêxemberî -selat û selam li ser bin- hemyan yê red û înkar diken!

Xudê Te'ala dibêjît:

إِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ إِخْوَةٌ فَأَصْلِحُوا بَيْنَ أَخَوَيْكُمْ وَاتَّقُوا اللَّهَ لَعَلَّكُمْ تُرْحَمُونَ

"Bê şik îmandar hemî birayêt êkin (anku yêt îmanê ne). Vêca hûn navbeyna hemî birayêt xwe her bi sulhê û pêkhatinê xweş biken."[965]

Xudê Te'ala dibêjît:

فَاتَّقُوا اللَّهَ وَأَصْلِحُوا ذَاتَ بَيْنِكُمْ وَأَطِيعُوا اللَّهَ وَرَسُولَهُ إِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِنِينَ

"Vêca hûn ji Ellahu Te'ala bitirsin; (bê-emriya Wî neken) û di navbeyna xwe da her sulh û selahetê biken. "Hûn her bi gotina Ellahu Te'ala; Qur'ana kerîm û bi hedîsêt Pêxemberê Wî 'emel biken, heke rast e ku hûn dixudan îman û bawerî ne."[966]

965 Sûreta Hucurat 10
966 Sûreta Enfal 1

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِنْ خِفْتُمْ شِقَاقَ بَيْنِهِمَا فَابْعَثُوا حَكَمًا مِّنْ أَهْلِهِ وَحَكَمًا مِّنْ أَهْلِهَا إِن يُرِيدَا إِصْلَاحًا يُوَفِّقِ اللَّهُ بَيْنَهُمَا ۗ إن الله كان عليما خبيرا

"Vêca (ey gelî kesûkarêt jin û mêra!) Heke hûn ji wan jin û mêra; ewêt navbeyna wan ya ne xweş tirsan; ku ew dê êkûdu hêlin û dê jêk çine paş, hîngê hûn xêr xwazekî ji rexê lêzimêt zelamî ve û xêr xwazekî ji rexê malbaba jinkê ve bi rêkene nik wan. Heke ew her du ji dil bin bo pêk hatin û sulha wan Ellahu Te‘ala dê navbeyna wan her duka li ser destê wan xweş ket û dê wan pêkînît. Bê şik Ellahu Te‘ala, yî zana û agehdar e bi hemî tiştan."[967]

Herdîsa Xudê Te‘ala dibêjît:

يَا أَيُّهَا الَّذِينَ آمَنُوا لَا تَقْتُلُوا الصَّيْدَ وَأَنتُمْ حُرُمٌ ۚ وَمَن قَتَلَهُ مِنكُم مُّتَعَمِّدًا فَجَزَاءٌ مِّثْلُ مَا قَتَلَ مِنَ النَّعَمِ يَحْكُمُ بِهِ ذَوَا عَدْلٍ مِّنكُمْ هَدْيًا بَالِغَ الْكَعْبَةِ أَوْ كَفَّارَةٌ طَعَامُ مَسَاكِينَ أَوْ عَدْلُ ذَٰلِكَ صِيَامًا .

"Ey gelî yêt hewe îman û bawerî înandî! Demê hûn di Îhrama da, hûn çu heywana nekujin (nêçîra dêmî neken). H heçî kesê ji hewe bikeyfa xwe heywanekî bikujît (nêçîrê biket), hîngê cezayê wî heywaneka; wekî wê heywanî ye; ewa ku wî kuştî, du zelamêt ‘adil ewêt ku ji hewe (anku du zelamêt Busulman) dê hukmî bi vê hindê den, ev qurbane xelateke divêt, bigehîte bajêrê Ke‘ba bi rûmet. Yan jî, ew dê pêş wî heywanî ve kefareta xwe; xwarnê dete feqîr û jara, yan jî ew dê hindî mîqdara wê xwarnê rojiya girît."[968]

967 Sûreta Nîsa 35
968 Sûreta Maîde 95

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِنِ امْرَأَةٌ خَافَتْ مِنْ بَعْلِهَا نُشُوزًا أَوْ إِعْرَاضًا فَلَا جُنَاحَ عَلَيْهِمَا أَنْ يُصْلِحَا بَيْنَهُمَا صُلْحًا وَالصُّلْحُ خَيْرٌ

“Heke jinkek ji zelamê xwe tirsa; ku ew dê xwe li gel bêterz û dest ne xweş ket, yan jî dê rûyê xwe lê badet, hîngê çu guneh nîne li ser her duka ku hema ew bi xwe di navbeyna xwe da pêk bên. Pêkhatin bo wan gelek çêtir û bi xêrtir e.”[969]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لَا خَيْرَ فِي كَثِيرٍ مِنْ نَجْوَاهُمْ إِلَّا مَنْ أَمَرَ بِصَدَقَةٍ أَوْ مَعْرُوفٍ أَوْ إِصْلَاحٍ بَيْنَ النَّاسِ وَمَنْ يَفْعَلْ ذَلِكَ ابْتِغَاءَ مَرْضَاتِ اللَّهِ فَسَوْفَ نُؤْتِيهِ أَجْرًا عَظِيمًا

“Di nav bahra pitir ji xilwehiyêt wan da qet çu xêr û başî nîne, hema ew têne; yê ku emrî bi dana xêra yan bi kirna qencî û çakiyê, yan jî bi sulh û selahetê (û pêk hatinê) diken di navbeyna mirovan da. Heçî kesê bo riza Ellahu Te‘ala van tiştan biket, paşê Em dê xelatekî gelekî mezin deyne wî.”[970]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَلَا تَجْعَلُوا اللَّهَ عُرْضَةً لِأَيْمَانِكُمْ أَنْ تَبَرُّوا وَتَتَّقُوا وَتُصْلِحُوا بَيْنَ النَّاسِ وَاللَّهُ سَمِيعٌ عَلِيمٌ

“(Ey gelî Busulmana!) Hûn sûndxwarna bi navê Ellahu Te‘ala bo xwe nekene asteng û hêcet ku hûn bêjin; me yê sûndxwarî em hêdî bi başî û teqwadarî sulh û selahetê di

969 Sûreta Nîsa 128
970 Sûreta Nîsa 114

navbeyna xelk û ‘alemê da nakeyn. Ellahu Te‘ala haj hemî deng û pêjiniya heye û Ew yî zana ye bi hemî tiştan.”[971]

Ebû Hureyre (Xudê jê razî bît) dibêjît; Pêxemberî -selat û selam li ser bin- yê gotî:( Li heçî roja çavê rojê lê hiltêt û derdikevît hemî geh û weselêt mirovan (ku ew sêsed û heştî ne) heqekî wan yê li ser mirovan hey; ku ew bo her geh û weseleka xwe sedeqeyekê biden; bo şukura Xudê Te‘ala û muhafza wan, û jixwe yê sulh û selahetê di navbeyna du kesa da biket ew bo wî xêreka gelek mezin e).[972] Ummî Kulsuma kiça ‘Uqbetê kurê Ebu Mu‘eyid (Xudê ji wê razî bît) dibêjît min ji Pêxemberê Xudê Te‘ala -selat û selam li ser bin- yê guhlê bî wî digot: (Ew kes ne direwîne; yê ku bo sulh û selahetê di navbeyna hindeka da hinde direwêt hûr û mûr bînît û bibet anku bêjît û biket bo sulh û selahetê).[973]

Îmamê Buxarî (Xudê jê razî bît) di sehîha xwe da ya rîwayet kirî û dibêjît: Carekê Ehlê Qubayê lêkketin heta wan bi bera danade êkûdu, îna hindeka gote Pêxemberê Xudê Te‘ala -selat û selam li ser bin- hal û mesele eve ye, Pêxemberê Xudê Te‘ala -selat û selam li ser bin- got: Dê rabin herin sulhê di navbeyna wan da biken, anku wî gote sihabiyêt xwe herin sulhê di navbeyna wan da biken û wan pêkbînin).

-Xewaric înkara van her sê edîlêt ehkamêt şerî‘etê dînê Îslamê diken anku: (Sunnetê, Îcma‘ê û Qiyasê), ew dibêjin; hema me Qur’an bitinê qebûle û besî me ye. Xaseten ew înkara sunnetê diken, ew dibêjin: Çî tiştî ummetê muhtacî pê hey behsê wan hemyan di Qur’anê da yê hey û yê hatî, qet lazimî bi sunnetê nîne, anku hedîsêt

971 Sûreta Beqere 224
972 Mutefequn‘eleyhî
973 Mutefequn‘eleyhî

Pêxemberî -selat û selam li ser bin- ew hemî hedîsa red diken! Ew hema wan hedîsa bitinê qebûl diken ewêt ku bi dilê wan û keyfa wan bin.

- Xewaric bi kirna gunehêt mezin wekî; vexwarna ‘ereqê, kirna zînayê, mirovan kafir dizanin û ew dibêjin: Yê van gunehêt mezin biket ew kafire, ew xûna wî gunehkarî û malê wî bo xwe helal dizanin û dibînin!
- Ew her xwe cuda û veder diken ji nav ummetê, herb û şerê li gel Busulmana wacibê wan yê jirêve ye, ew dibêjin: Her Busulmanekî hebît heke negehîte me û nebîte tabi‘ê me, ew kafire û kujtina wî ya fer û helale.

- Ew dibêjin: Fer û pêtivî ye li hemberî rêber û mezinêt Busulmana her berhingarî bête kirin û ya berdewam bît.

- Ew îmam ‘Usmanê kurê ‘Efanî, ‘Eliyê kurê ebû Talibî, Telheyî, Zubeyrî û ‘Aîşayê (Xudê ji wan hemyan razî bît) haşa kafir dibînin û dizanin!

- Ew dibêjin: Wacib e jinik wan nivêjan hemyan qeza biket ewêt; ku di heyza da lê çûyîn û nekirîn.

- Hîndek ji Xewaricêt vî zemanî dibêjîn: Mizgeftêt vî zemanî mescîda-Dîrarin; ew naçine mizgefta û nivêjê li dûv çu mela jî naken!

- Xewaricêt vî demî dibêjîn: Xwandin li mektebêt vî zemanî ya heram e, wacib e em pişta xwe bideynê û ‘eyalê xwe jî jê dûr bikeyn.

- Hîndek ji van Xewaricêt vê dûmahîkê ‘eynen wekî Cuhyêt tûndrê dibêjîn: Suwarbîna turumbêla, şolkirna bi ceyranê, ‘emelkirna bi van cîhazêt nûy anku ‘emelkirna bi teknolojiya vî zemanî ya heram e û ne ya durust e !.

# MU‘TEZİLÎ

Ev firqa dibêjinê Mu‘tezilî di navbeyna 105-110 hîcrî da, ya peyda biy, sebebê ku ew bi vî navê hatîne nav kirin dibêjin; mezinê wan; Wasilê kurê ‘Etayî li gel heval bendêt xwe, wan xwe ji nav dîwan û civata Hesenê Besrî (Xudê jê razî bît) yê cuda kirî û daye paş ji ber hindê dibêjne wan; Mu‘tezilî.

Belê Doktor Ehmed Emîn (Xudê jê razî bît) di kitêba xwe da ewa ku bi navê (Fecrul-Îslam) da, ji Meqrizî vedgêrît û dibêjît: Hinde cuhî Busulman bibin, ew hîngê hindeka dibînin berê xwe didenê ku fikir û bîr û baweriyêt wan ‘eynen wekî fikir û bîr û baweriyêt wê firqa cuhyane ewa ku bi navê Firuşîm, îna wan cuhiyêt Busulman bîn ev navê Mu‘tezilî danade ser wan; çûnku me‘na vî navê; Firuşîm îtîzale anku xwe dûr û veder kirne bi ezmanê cuhya.

Heta vê gavê jî dûvelankêt wan yêt heyîn û yê benîştê wan dicûyn, belê, ew neşên zûy bi zûy xwe bo xelk û ‘alemê aşkira biken; ji ber fikra xwe ya herimî û pûç û betal .

Ev firqa Mu‘teziliya îman û baweriyê bi îrada Xudê Te‘ala ya şer‘î; dînî bitinê tînîn, ew îman û baweriyê bi îradeta Xudê Te‘ala ya kewnî; qederî naînin lewma ew yê ji dînî xirhayin û derketîn.

Ev firqa Mu‘teziliya navêt Xudê Te‘ala ewêt law û cuwan bitinê qebûl diken, belê ew bi aqilê xwe sîfet û wesfêt Xudayê Jorî; ewêt ku disabit bi Qur’an û sunnetê hemyan red û înkar diken, ew bir û firqeyeka batil û xirhayî ne, ew ne ji Ehlê-Sunnetê û cima‘etê ne..

Ev firqa Mu‘teziliya bi van fikrêt batil ya meşhur e :

- Ew delîlêt aqilî pêştêxin û di ser delîlêt neqlî ra radigirin; anku di ser ayet û hedîsa ra!

- Ew sîfet û wesfêt Xudayê Jorî; ewêt ku bi ayet û hedîsêt rast û durust sabit bîn, ew wan hemyan redd û înkar diken.

- Ew wan hedîsêt rast û durust; ewêt ku di derheqa babetêt îman û baweriyê da hatîn hemyan direw dizanin û hisab diken.

- Ew wan mirovan; ewêt ku gunehêt mezin kirîn û diken, dibêjin ew li axretê heta hetayê dê mine di Cehnemê da, belê di dinya yê da ew dê di navbeyna her du menzîla da mînin, ye‘nî ew ne kafir in û ne jî mû’min in, ew bi vê bîr û baweriya xwe ‘eynen wekî Xariciya ne.

# MÛRCÎE

Me'na Mûrcîe anku îrcaî: Li nik zanayêt luxetê 'erebî gîrokirin û paşve hêlane, û di îstîlaha 'alim û zanayêt 'eqîdê da, paşve hêlan û derêxistina 'emelî ye ji nav heqîqeta îman û baweriyê.

İbn Kesîr (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Sebebê ku Murcîe bi vî navê hatîne navkirin êv e ye; çûnku wan di derheqa îman û baweriyê da; gotin ya pêş êxistî û 'emelkirna bi e'za ya gîrokirî û paşve hêlayî).[974]

Ev fikir; bîr û baweriyêt îrca'a fuqeha û Kelamciya ji rêve yê ji van her du kesa; anku Zerrê kurê 'Ebdullahê Hemedanî û Cehmê kurê Sefwanî yêt hatîne wergirtin û paşê Cehmê kurê Sefwanî ev fikir; bîr û baweriyêt he li nav xelk û 'alemê yêt belav kirîn.

Îshaqê kurê Îbrahîmê Nexe'î (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Min gote babê 'Ebdullahî anku Îmamê Ehmedê kurê Henbel (Xudê jê razî bît) gelo yê ji rêve di derheqa îmanê da şaş axiftî kî ye? Wî got dibêjin: Yê ji rêve di derheqa îmanê da şaş axiftî ew mirove yê ku navê wî Zerr e anku Zerrê kurê 'Ebdullahî ye).[975]

Hesenê kurê 'Ubeydullahî dibêjît: Min ji Îbrahîmê Nexe'î (Xudê jê razî bît) guhlê bû li demê wî gotiye Zerrî (Ew ê mezhebê Murciya ji rêve danadî): Ey Zerro! Xudê te bikujît, ev e çî dîne yê ku tu pê hatî û dibêjî? Zerrî got: Ev e hema re'ya min e; ewa ku min dîtî û ez dibêjim!

Îbrahîmê Nexe'î dibêjît, paşê didûv ra, min guh lê bû Zerrî bi xwe digot: Ev e anku ya ku ez dibêjim: Hema ew

974 Ji Şebeket sewtulhuriyye
975 Kitêba Mesaîlul Îmam Ehmed ya Îshaq kurê Îbrahîmî

dîne yê ku Xudê Te‘ala Nuh Pêxember (silav li ser bin) pê hinartî !!).[976]

Fedlê kurê ‘Eyadî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Ehlê îrcaê anku şirî‘et zanayêt Murcîa- dibêjin: Îman gotina bêy ‘emele, -Kelamciyêt Murcîa- dibêjin: Îman hema zanîn û niyasîna Xudê Te‘ala ye, ya bêgotin û ‘emele.

Belê Ehlê sunnetê dibêjin: Îman zanîn û (niyasîna bi dilî ye), gotin bi ezmanî û ‘emelkirna bi e‘za anku bi endamêt bedenê ye).[977]

Wekî‘ê kurê Cerrah (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Di navbeyna Cehmî û Murciya da qet çu ferq û cudahiyêt we dimezin nînin; çûnku Cehmî dibêjin: (Îman hema zanîn û niyasîna bi dilî bitinê ye, û Murcîe jî dibêjin: Îman îqrar û gotina bi ezmaniye û li gel tesdîqa bi dilî ye).[978]

Îmamê Ewza‘î (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Yehyayê kurî Ebû Kesîr û Qetadeyî wan her duka digot: Hindî em ji fîkir; bîr û baweriyêt îrcaiya ditirsîn li ser ummetê; qet ji çu tiştêt dî hind natirsîn).[979]

‘İkrîme zar ‘Ebdullahê kurê îmamê ‘Ebas (Xudê ji wan her duka razî bît) rîwayet diket û dibêjît: (Hûn gelek xwe ji fîkir, bîr û baweriyêt îrcaîya sitare û muhafize biken, bê guman bîr û baweriyêt wan şû‘be û tayekî Filatiyê ye).[980]

Di tarîxa Îslamê da, qet çu bir û firqêt wekî firqa Murciya dixirab û dixirhayî peyda nebîne; wan te‘sîreka gelek bi tehlîke ya hêla ye li ser ruha ummetê, heta vê gavê jî ew tehlîka giran ya dikelexê ummetê di xebitît!

---

976 Muntedelhîwar el‘Eqaîdî ye
977 Tehzîbulasar ya Teberî
978 Tehzîbulasar ya Teberî
979 Kitêba sunnet ya Xelalî
980 Ji kitêba Şerhu Usul Î‘tiqad Elusnnetî we Elcema‘e ya Elkaî

Îmamê Zuhrî (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Qet çu bîd‘êt wekî bîd‘a (fîkir, bîr û baweriyêt) îrcaiya bo Busulmana bi zerer di nav dînê Îslamê da derneketîne).[981] Mûrcîe di muxalifin li gel Ehlê-Sunnetê û cima‘etê di ‘eslê ‘esîl da; anku di ‘Eqîde; îman û baweriyê da.

Ehlê-Sunnetê û cima‘etê dibêjin îman: Gotina bi ezmanî û îqrara bi dilî û kirna tekalîfêt dîniye bi e‘za anku endamêt bedena xwe, îman kêm û zêde dibît; anku ew bi kirna ta‘etî zêde dibît û bi kirna bê-emriya Xudê anku guneha kêm dibît.

Belê Mûrcîe; dibêjin: Îman hema bi gotina ezmanî û bi îqrara dilî bitinê bicih têt, ew ‘emelî bo durustbîna îmanê nahejmêrin û qet hisab naken, ew dibêjin; îman kêm û zêde nabît, nê gava wan got; min îman înand xilas; qet hêdî kirna ta‘etî û guneha li dev wan çu te‘sîrê li îmana wan naket! Ev e firqeyeka batil û xirhayî ne, ew ne ji Ehlê-Sunnetê û cima‘etê ne. Binîşêt xirhayî yêt vê firqê hindek jê eve ne, anku ew dibêjin:

- Şîrk û guneh qet çu zererê nagehîne îmana mirovî.

- Qet îman kêm û zêde nabît.

- Yê tekalîfêt dînî; anku kar û ‘emelêt ferz hemyan jî terk biket, qet çu zerer nagehîte îmana wî.

- Mû’minêt gunehkar, ew îmandarêt timam û kamilin; çunku kamilbîna îmanê bi gotina ezmanî û îqrara bi dilî bitinê ye, anku çû caran îman zêde û ze‘îf nabît.

-Çunku ew ‘emelkirnê, bo timamiya îmanê nahejmêrin û hisab naken ew dibêjin: Kirna ‘emela ne ya Ferz e û ne ya wacib e jî.

---

981 Berê xwe bide kitêba Îbana kubra

Belê Ehlê-Sunnetê û cima‘etê dibêjin: Îman tesdîq û îqrara bi dilî û gotina bi ezmanî û ‘emel kirina bi e‘za anku bi endamêt bedena xwe. îman û bawerî bi kirna ‘îbadet û ta‘etî zêde dibît û bi kirna guneha; bê-emriya Xudê Te‘ala kêm û ze‘îf dibît.

Ev te‘rîfe te‘rîfa îmamêt Ehlê-Sunnet û cima‘etê ye anku wan hemyan bi vî rengî ya qebûlkirî û pê ‘emel diken.

Kirna guneha, zererê didete îman û baweriyê, nê yê ku bi berdewamî û li dûvêk guneha biket ew jê tobe neket bivêt û nevêt ew dê kevîte nav şîrkê û kafiriyê.

Ne kirna ‘emelêt ferz xudanê xwe têxîte nav kafiriyê û mû’minê gunehkar îmana wî ne ya timam û kamile.

Belê şîrk û kafirî ji binî îman û baweriyê radiken ji dev xudanê xwe.

## CEBRİYE; (CEHMİYYE)

Ev firqa Cebriya; (Cehmiya), bal Cehmê kur ê Safwanî ve tête lê dan, Cehmê kur ê Safwanî Xelkê Xurêsanê ye di ‘eslê xwe da, ew ji wêrê yê çûye Kufayê, piştî ku Ce‘dê kurê Dîrhemî ji Dîmeşqê revî û çûye Kufayê, hîngnê Cehmê kurê Safwanî li wêrê li ber destê wî yê xwandî anku yê biye feqyê wî.

Belê ev firqa dibêjinê; Cebrî; (Cehmî), jirê ve li dûmahîka ‘esrê tabi‘iya, piştî mirna ‘Umerê kurê ‘Ebdul-‘Ezîzî (Xudê jê razî bît), bi destê Ce‘dê kurê Dîrhemê Herranî ya peyda biy û çêbî, ewî ev gotinêt delalet û xirhan pê çêdibît li berdestê miroveki cuhî xwandibin û wergirtibin, navê wî cuhî Talut bû, wî Talutî li berdestê Lebîdê kurê E‘semî yê xwandî. Lebîdê kurê E‘semî cuhiyek bû ji benî Zerîqa; ew ew bû Ew ê ku sêhr li Pêxemberî-selat û selam li ser bin- kirî

Paşê Ce‘dê kurê Dîrhemî ew gotin li bajêrê Besrayê yêt belav kirîn û li wêderê hinde mirov yêt bîne tabi‘êt wî.

Xalidê kurê ‘Ebdullahê Qesrî (Xudê jê razî bît) li sala 105 hîcrî ew Ce‘dê kurê Dîrhemî yê kuştî.

Paşê piştî wî dûvelankê wî yê meşhur anku Cehmê kurê Sefwanî Ew ê ku li ber destê wî xwandî, wî jî di dûv ra ew gotin û fikra herimî û pîs ewêt ku ji Ce‘dê kurê Dîrhemî wergirtîn, wî jî ji dev xwe gelek tiştêt dî yêt hêj herimî û xirabtir yêt lê zêde kirin û li wêderê anku li Îraqê hinde mirov bi dûv wî kevin û bine tabi‘êt wî, paşê ew ji wêrê tête nefîkirin bo herêma Xurêsanê, ew li bajêrê Tirmizê xwe cih dibît, ew van fikrêt batil û herimî, li wêrê jî belav diket heta serçeqêt wî digehne bajêrê Xurêsanê û Belxê jî.

Di ‘eqîda Tehawî da (Xudê jê razî bît) ya hatî, ew dibêjît: Ev Cehmê kurê Sefwanî li dewrê Emewiya emîrê

Xurêsanê Selemê kurê Ehwezê el-Mezinî (Xudê jê razî bît) li sala 128 hîcrî ew yê kuştî.

Cebrî; (Cehmî) û Qederî du firqêt bi zidê êkin, firqa Cebrî; (Cehmî) bi ‘eksa wan anku ya Qederiya ya çêbî û peydabî. Ev her du firqêt he; Cebrî; (Cehmî) û Qederî, di derbarî ‘eqîdê da şaşî û xeletiyêt wan ji hedî yêt derketîn, heta ku ev hinde ya biye sebebê xirhan û kafiriya wan her du firqa.

Ev firqa Cebriya; (Cehmiya), Tewhîda navêt Xudê Te‘ala; ewêt ku dilaw û cuwan û sîfet û wesfêt Wî yêt bilind û bala hemyan red û înkar diken û ew dibêjin: Navêt Xudê Te‘ala hemî, hema hinde lefzêt rep û rûtin ew delaletê nakene ser çu sîfet û wesfêt Wî û çu me‘ne bo wan nîne.

Ev Cebriye; (Cehmiye) firqeyeka batil û xirhayî ne; qet ew ne ji Ehlê-Sunnetê û cima‘etê ne.”

Serîkehniya zanîn û ‘eqîda firqa Cebriya; (Cehmiya) bi zanayêt Cuhya ve ya girêda ye (anku wan zanîn û ‘eqîda xwe ji Cuhya ya wergirtî).

Ev firqa Cebriye; (Cehmiye) ew hosa baweriyê û îmanê tînîn û ew dibêjin: “Heke em van nav, sîfet û wesfêt Xudayê Jorî ka çewa ew hatîne wesa qebûl bikeyn, hîngê dê diyar bît ku Xudayê Jorî ne zatekî bitinê ye, belkî Ew ji gelek zata pêk têt, ev e di vî haletî da û bi vê baweriyê ew dibêjin: Heke em qebûl bikeyn, em dê kevîne di nav şirkê da, vêca ji ber wê hindê ew dibêjin: Em çu sîfet û wesfa layiqî Xudayê Jorî nabînîn!”

Em dişêyn bersiva vê şûpha wan ya batil bideyn û bêjîn:

Nê ew kesêt bi ‘eqîda firqa Cebriya; (Cehmiya) ve digirêdayî ew bo xwe bi xwe; gelek sîfet û wesfa layiq xwe dibînin, ev e wekî; ‘alimiyê, zengîniyê, taciriyê, sin‘et

kariyê, merdiniyê û mêraniyê, nê ew mirovê çend nav û wesfek ji van pêkve li ser bin, ew nabîte gelek mirov ew hema her êkî bitinê ye, çenda ku hinde wesf û sîfetêt wî jî hebin. Pa heke em van sîfet û wesfêt Xudayê Jorî; ewêt ku ayet û hedîsêt rast û durust pê hatîn û xeber jê dayî qebûl bikeyn, ji ber hindê bikevîne nav şîrkê, ev e ummeta Muhemmedî -selat û selam li ser bin- haşa hemî pêkve bine muşrîk, gelo ma ev e bi aqilê kê ketiye û kî dişêt vê qebûl biket; eva ku ew anku fîrqa Cebriya;

(Cehmiya) dibêjît!!!

Ev fikir bîr û baweriyêt ku ew li dûv diçin û dibêjin ji hedî zêde xirhan û kafirî pê çêdibît, ji bilî vê hindê jî erê, ma çu mirov, zat û kesêt bêwesf û sîfet (xislet û saluxet) hene!

Belê ew îmandarêt li ser ‘Eqîda Ehlê-Sunnetê vî babetî yê ku ew anku Cebrî; (Cehmî) pê xirhayîn û kafir bîn hosa aşkira diken; cewaba wan diden û dibêjin:

- Gelekiya nav û sîfet û wesfa qet‘iyen wê me‘nê ku yê gelek nav û sîfet (xislet) li ser ew ji ber hindê dibîte gelek zat û mirov.

- Xudayê Jorî gelek nav û sîfet yêt heyn, ev nav û sîfetêt he hemî delaletê dikene ser bêqusûrî û mezinahiya zatê Xudayê Jorî, qet‘iyen ew delaletê nakene ser gelekiya zatê Xudayê Jorî (nê Xudayê Jorî xudanê van hemî nav û sîfeta ye li gel wê hindê jî Ew hema her zatekî bitinê ye).

Ev firqa Cebriya; (Cehmiya), firqeyeka xirhayî û kafire, ev firqa Cebriya; (Cehmiya) îman û baweriyê bi îrada Xudê Te‘ala ya kewnî; qederî bitinê tînin, ew îman û baweriyê bi îrada Xudê Te‘ala ya şer‘î; dînî naînin û wekî dî jî ew hemî nav û sifetêt Xudê Te‘ala red û înkar diken, ew hema sîfetê şiyan û qudreta Xudê Te‘ala bitinê qebûldiken, ev e jî ji ber

wê hindê ye; çûnku ew dibêjin: Mirovan bi xwe qet çu şiyan û qudret nîne; qet ew bi xwe neşên çu biken, lewma ev firqhe; anku Cebriya; (Cehmiya) yê ji dînî xirhayîn û kafir bîn. Cebriyye li ser rêka Cehmê kurê Sefwanî diçin, lewma dibêjine wan Cehmiye jî.

Dibêjne wan Cebriyye çunku ew dibêjin: ‘Ebd yî mecbûre li ser kirna hemî fê‘il û kirnêt xwe, çunku di heqîqetê da hema her Ellahu Te‘ala ye, yê ku wan fê‘il û kirna bi ‘ebdî didete kirin, herdîsa ew dibêjin: Hema her Ellahu Te‘ala ye; yê ku ‘ebdêt xwe mecbûr kirîn li ser îmanê yan jî kafiriyê, anku îman û kafiriya wan ‘ebda nebidestê wan e.[982]

Ew anku Cebriye; (Cehmiye); dibêjin: (Hîndîku ‘ebde qet çu serbestî û cuzê îxtiyarî di destê wî da nîne; ew bi xwe neşêt çu tiştî biket yan neket, ew (hema her wekî robotekî ye) wekî permûckekî ye li ber bayî; bayî çewa bivêt dê wî wesa înît û bet û lêk zivirînît, qet ew bi xwe neşêt çu tiştan biket, hema her Ellahu Te‘ala ye yê; ku hemî tiştan bi ‘ebdî didete kirin.

Vêca ji ber vê hindê ku ew yî mecbûre li ser kirna hemî kirin û fê‘lêt xwe, jiber hindê bese bo wî di derheqa mesela hisab û kêşana ‘emela da ku ew hema îman û baweriyê bi dilê xwe bînît bi Xudê Te‘ala û hind, xwe wî çî guneh, kafirî û şîrk jî kirbît; qeydî naket bo wî çu nîne, ew mu’min e û îmandare, qet çu hisab li ser wî nîne û li gel wî kirn li roja qiyametê; çunku her Ellahu Te‘ala ye, yê ku wan fê‘il û kiryara hemyan bi wî anku bi ‘ebdê xwe didete kirin, ew hema bi dilê xwe Xudê Te‘ala binyasît bo wî bes e, ew dê qurtal bît û çîte Biheştê, belê ew kesê bi dilê xwe Xudê Te‘ala niyasneket eha ew dê dihîlak çît û çîte Cehnemê.

---

982 Kitêba el-Mîlel we n-Nuhel ya Şehristanî

Ev fikir, bîr û baweriya herimî û pîs ya vê firqa Cebriya; (Cehmiya) ya di serê geleka ji miletê me jî da ya hey; tedît hindeka ji wan bê nivêjan; ewêt ku berê qublê nuzanin got: Şert ev dereye; ew îşaretê dikene bal dilê xwe ve û dibêjin: Dilê me yî paqije, nê em jî Xudayê xwe diniyasîn, em Busulmanîn, bêyî ku ew kelîma şehdê bi devê xwe bêjin; tesdîq û bawer biken, ji xwe ‘emelkirna bi e‘za anku bi endamêt bedenê hew wekî ku kelîma şehdê delaletê dikete ser qet‘iyen çu ‘elametêt we li dev wan nînin û tu nabînî û ew bi wî halî jî dibêjin: Em Busulmanîn!

Eve ‘eynen ew jî wekî vê firqa xirhayî anku wekî Cebriya; (Cehmiya) hizir diken û dibêjin: Ku hema bi dilî nîyasina Xudê Te‘ala bese û jixwe yê bi devî şehde bidet yan hema carekê şehde dabît ew Biheştiye. Nê hekerast e dilê wan yî paqije; divêt, ew xwe ji hemî la ve anegora kelîma şehdê rast û durust biken; anku divêt, jirêve ew vê kelîma şehdê bi ezmanê xwe durust û bi aşkirahî bêjin û li demê ew vê kelîma şehdê dibêjin ew law me‘na wê bizanîn û fehim biken; ka ew bo çî dibêjin û divêt, ew di dilê kûr da ji dil bi bîr û bawerî hejê biken; anku divêt, ew di dil qebûl û tesdîq biken.

Her dîsa divêt, li demê ku ew vê kelîma şehdê bi devê xwe dibêjin, ew bi ‘ezayêt bedena xwe jî bê riya û rûmetî pê ‘mel biken; ye‘nî ew emr û nehyêt dînê Îslamê, dînê Xudê Te‘ala bi durustî û timamî hindî şiyana xwe bicih bînin, da ku rast bît ku dilê wan yî paqije. Belê, di ‘eslê xwe da ew gotina wan bi devê xwe girtî û dibêjin; dilê me yî paqije, ew gotin ya êzidiyane.

Ev firqa Cebriya; (Cehmiya) ji hemî firqêt dî ya xirabtir û pîstire; çunku ew wesa hisab diken ku haşa Xudê Te‘ala zilm ya li ‘ebdêt xwe kirî û diket!

Îmamê kurê Hezmî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Mirov yêt ketîne îxtîlafî di çewatiya îmanê da; (anku ka çewa mirov îmanê bînît dê ya durust bît), ev e hindek dibêjin; anku firqa Cebriya; (Cehmiya) îman û bawerî, hema ew e ku mirov bi dilê xwe Xudê Te'ala binyasît û hind, çenda yê ku Xudê Te'ala bi dilê xwe diniyasît, ew bibîte Cuhî, File û xwe ew çend new'êt kafiryê bi 'îbadet kirna xwe û bi ezmanê xwe jî bêjît û biket û jê aşkira bibin jî qet çu nîne, çunku ew bi dilê xwe Xudê Te'ala diniyasît; ew Busulmane û ehlê Biheştê ye, ev gotine yêt Cehmê kurê Sefwanî bi xwe ye.[983]

Îmamê Ehmedê kurê Henbel (Xudê jê razî bît) dibêjît: Cehmiye dibêjin: Îman û bawerî hema; ew e ku mirov bi dilê xwe Xudayê xwe binyasît û nasbiket, xwe heke ku mirov çu 'emelî bi e'zayêt xwe jî neket.

Dîsa îmamê Ehmedê kurê Henbel (Xudê jê razî bît) dibêjît: Ev e kafirî ye, nê Îblîsî anku şeytanî jî Xudayê xwe bi dilê xwe diniyasî, ev e bo me ji vê gotina wî aşkira dibît li demê wî gotiye Xudê Te'ala:

قَالَ رَبِّ بِمَا أَغْوَيْتَنِي

"Îblîsî got: "Ey Rebbê min! Madem Te ez xirandim û di ser rê da birim."[984]

Ev firqa Cebriya; (Cehmiya), ew ew in; ewêt ku di derheqa îsbatkirna Qederê da zêde ji hedî derketîn û çûyîn, heta ew înkara wê hindê jî diken ku kirina fê'il û karekî bi rastî û heqîqet ya 'ebdî bît, ew dibêjin: 'Ebdî qet çu huriyeta yan cûzê îxtiyarî nîne, belê ew hema wekî permûçkekî ye li ber bayî.

983 Kitêba el-Mîlel we n-Nuhel ya îbn Hezmî
984 Sûreta Hîcr 39, Kitêba El-Lewhe ya Xelalî

Ew dibêjin; li demê tête gotin: Filan ‘ebdî yê ho kirye û yê ho dikete, ew mecazî ye; li demê ‘ebdî nivêjkir, rojî girt, êk kuşt yan jî dizîkir, ‘eynen ev e bi timamî wekî wê gotinê ye li demê ku tête gotin; roj derket û baran ya dibarît.

Şehriştanî (Xudê jê razî bît) pêve diçît û ew gotin, bîr û baweriyêt firqa Cebriya; (Cehmiya) pêşçav diket û dibêjît; Cehmê kurê Sefwanî şêxê Cebriya di derheqa wê quwet û şiyanê da; ewa ku tişt pê têne kirin û peyda dibin dibêjît: Qet‘iyen mirov bi xwe neşêt çu tiştî biket û qet wî çu pê çê nabît; çunku ew di kirna fê‘il û kirnêt xwe da yî mecbûre; ye‘nî Xudê Te‘ala bi wî didete kirin (anku ew wekî wî aletitiye; yê ku tişt pê têne çêkirin û hind), qet wî bi xwe çu îrade û serbestî; cuzê îxtiyarî nîne, hema her Xudê Te‘ala ye, yê wan fê‘il û kirinêt ku ew diket bi wî didete kirin, ev e her wekî ku Xudê Te‘ala fê‘il û kirnêt tiştêt bêruh pê didete kirin, ‘eynen ew fê‘il û kirinêt ji ‘ebda jî peyda dibin ew bi mecazî bi bal ‘ebda ve têne lêdan, ev e her wekî fê‘il û kirinêt tiştêt bêruh ku çewa bi mecazî bi bal wan ve têne lê dan, ev e her wekî tête gotin: Darê fêqî pîve hat anku fêqî pêve hat, av ya diherikît anku ya diçît, roj derket û ava bû û ‘erd livlivî û şînbû, ev e wekî gelek tiştêdî jî, fê‘il û kirnêt hemî tiştêt xudan ruh û yêt bêruh jî cebrîne anku Xudê Te‘ala (haşa) bi te‘dayî û kutekî bi wan didete kirin.

Cehmê kurê Sefwanî dibêjît: Li demê cebir û te‘dayî sabit bû, hemî teklîfêt Xudê Te‘ala; ewêt ku Ew li ‘ebda diket dibine cebir û te‘dayî, ew bi van gotinêt xwe (haşa) Xudê Te‘ala têxne di bin tûhmê da; ku Ew te‘dayî û zilmê li ‘ebdêt xwe diket û ji ber wê cizadanê jî; ewa ku Ew ‘ebda sera wan xirabî û guneha; ewêt ku ‘ebda nekirîn cizadidet, çunku Cebrî; (Cehmî) dibêjin; hema her Xudê Te‘ala ye, yê ku wan fê‘il û kirina; ewêt ku ‘ebd diken bi wan didete kirin).

Herdîsa haşa ew Xudê Te'ala têxne di bin tûhmê da û sûçdar diken, ev e li demê ku ew anku Cebrî; (Cehmî) dibêjin: Nê hema ji qesta Xudê Te'ala van teklîfa li 'ebda diket, û ew hîkmeta hemî emr û nehyêt Xudê Te'ala bême'ne û batil dizanin! Ev e bi wê ya ku ew dibêjin:

Diviyaba qet çu lomehî li 'ebda nehatiba kirin û ne hatibane cizadan jî li ser wê kafiriyê û wan guneha; ewêt ku wan kirîn û diken.

Ya aşkira ye bivêt û nevêt ev gotinêt wan hemî bi zidê geleka ji wan ayet û hedîsane anku wan nessane; ewêt ku şerî'etê dînê Îslamê pê hatî, nê ew zerer û xirabiya ji wa gotinêt wan çêdbît hema her Xudê Te'ala bitinê dizanît ka çenda ya mezin e.

Belê ehlê sunnet û cima'etê, ew îman û baweriyê bi wê hindê tînin ku Xudê Te'ala hemî tişt berî çêbîn û peydabîna wan di ezel da bi timamî yêt zanîn û Xudê Te'ala bi zanîna xwe hemî tişt berî xulqiyetkirna hemî mexluqta bi teqdîra xwe yêt muqeder û teqdîr û muheya kirîn. Vêca ew tiştê Ew hezbiket dê çêbît û peyda bît, ew tiştê Ew hezneket, qet ew çênabît û peyda nabît.

Her Xudê Te'ala bitinê xaliqê hemî tişta ye, hindî ku 'ebdin ew bi wê çêkirna Xudê Te'ala ew pê çêkirîn, ew di muxeyerin di kirin û nekirna wan tiştan da; ewêt ku Xudê Te'ala teklîf pê li wan kirî; ye'nî ew bi keyfa xwe ne, hezkê ew dê wan tişta ken yan jî naken; qet'iyen çu cebir û te'dayî li wan ne hatiye kirin û naête kirin jî; li ser kirin û ne kirna çu tiştan anku li ser kirna 'îbadet û ta'etî yan jî li ser nekirna xirabî û guneha, nê çî tiştê 'ebd diken ji başî û xirabiyan, ew hemî fê'il û kirnêt wan bi xwe ne, bi rastî û heqîqî aîdê wan ne, heta ew bi keyfa xwe ne; hezkê ew dê îman û baweriyê înîn yan jî qet naînin.

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَقُلِ الْحَقُّ مِن رَّبِّكُمْ ۖ فَمَن شَاءَ فَلْيُؤْمِن وَمَن شَاءَ فَلْيَكْفُرْ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje: “Ev Qur’ana ji layê Rebbê hewe ve hatî ya heq û rast e. Vêca heç heçî kesê yê hez biket bila ew îman û baweriyê pê bînît û heçî kesê hez biket jî bila ew ji kore fehmiya xwe înkara heqiyê biket.”[985]

Di hedîseka qudsîda Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin –dibêjît: Ellahu Te‘ala dibêjît: Ey gelî ‘ebdêt Min? Ez hema kar û ‘emelêt hewe li ser hewe, bo hewe hisab dikem; vêca heçî kesê xêr û çakiyan di lista ‘emelêt xwe da bibînît, bila ew medh û sena bo Xudê Te‘ala biket li ser wê hindê, û heçî kesê şer û xirabiyan di lista ‘emelêt xwe da bibînît, bila ew hema her lomey xwe bi xwe bitinê biket.[986]

Şeyxulîslam Ibin Teymiye yê Herranî (Xudê jê razî bît) dibêjît: ‘Ebd bi heqîqet fa‘ilêt kirin û fê‘lêt xwe ye, belê her Xudê Te‘ala ye xaliqê fa‘ilêt wan. ‘Ebd bi xwe yan îmandare yan jî kafire, yan yî baş e yan jî yî xirabkare, ‘Ebd bi xwe nivêja diket û rojiya digirît. ‘Ebd di xudan hêl û şiyanin li ser kirna fê‘il û kirnêt xwe, ew di xudan îradene, belê her Xudê Te‘ala ye xaliqê wan û xaliqê qudret û îrada wan, ev e her wekî Xudê Te‘ala dibêjît:

وَمَا تَشَاءُونَ إِلَّا أَن يَشَاءَ اللَّهُ رَبُّ الْعَالَمِينَ

“Belê, bêyî hezkirna Ellahu Te‘ala ku Ew Rebbê hemî ‘alema ye, qet hûn bi xwe neşên xwe bigehînine ser rêka heq û rast.”[987]

985 Sûreta Kehf 29
986 Muslim
987 Sûreta Tekwîr 29

Ev dereca he ya qederê, firqa Qederiya hemî; ewêt ku Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin – bi navê cuhyêt vê ummetê navkirin, ew îmanê pê naînin û direw hisab diken.[988]

Rast e Xudê Te'ala xaliqê fê'il û kirnêt 'ebdêt xwe ye, Ew bi kirna 'îbadet, ta'etî, başî û çakiyan ji 'ebdêt xwe yî razî ye, belê Ew bi kirna şîrkê, kafiryê, guneha û xirabiyan ji 'ebdêt ne yî razî ye, lewma ku heke ew 'ebdêt kafiriyê, şîrkê û guneha diken û jê tobe neken, Ew dê li roja qiyametê wan cizadet û bete Cehnemê.

Îmamê Ebu Henîfe (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Hemî fê'ilêt 'ebda; herekêt wan û sekinînêt wan, ji ked û kesba wa ye, Xudê Te'ala xaliqê ked û kesbêt wa ye, anku ew ked û kesbêt wan hemî bi îrade, zanîn, qeza û qedera Xudê Te'ala peyda di bin û têne meydanê, ne bi te'dayî lêkirnê). [989]

Herdîsa Îmamê Ebu Henîfe (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Her Xudê Te'ala bitinê hemî tişt yêt muqeder û teqdîr kirîn, nê di dinya û axretê da peydabîna hemî tiştan her bi îrade, zanîn, qeza û qedera Xudê Te'ala bitinê ye, Wî di ezel da, di Lewhê mehfuz da ew tişt hemî bi timamî yêt nivîsîn).[990]

Welhasîl van her du birayêt kafiriyê; anku Ce'dê kurê Dîrhemî û Cehmê kurê Sefwanî, mudehekî ew her duk pêk ve yêt bîne palêt belavkirna jehra bîr û baweriyêt xwe di nav xelk û 'alemê da, heta ku rêberêt Busulmana hîngê ew yêt mecbûr bîn, wan ew her duk yêt kuştîn, belê fayde naket, nê xwe heta vî demî jî dûvelakêt wan yêt mayîn, fikir û gotinêt wan; ewêt ku xirhan û kafirî pê çêdibît yê belav diken di nav xelk û 'alemê da, bi gelek nava xaseten bi navê Eş'eriyet û Maturîdî yê!

988 Ji kitêba 'Eqîdetu-Wasitiye
989 El-Fîqhul-Ekber
990 El-Fîqhul-Ekber

# QEDERİYE

Xudê Te‘ala dibêjît:

لا تَجِدُ قَوْمًا يُؤْمِنُونَ بِاللَّهِ وَالْيَوْمِ الآخِرِ يُوَادُّونَ مَنْ حَادَّ اللَّهَ وَرَسُولَهُ وَلَوْ كَانُوا آبَاءَهُمْ أَوْ أَبْنَاءَهُمْ أَوْ إِخْوَانَهُمْ أَوْ عَشِيرَتَهُمْ أُوْلَئِكَ كَتَبَ فِي قُلُوبِهِمُ الإِيمَانَ وَأَيَّدَهُم بِرُوحٍ مِّنْهُ وَيُدْخِلُهُمْ جَنَّاتٍ تَجْرِي مِن تَحْتِهَا الأَنْهَارُ خَالِدِينَ فِيهَا رَضِيَ اللَّهُ عَنْهُمْ وَرَضُوا عَنْهُ أُوْلَئِكَ حِزْبُ اللَّهِ أَلا إِنَّ حِزْبَ اللَّهِ هُمُ الْمُفْلِحُونَ

“(Ey Muhemmed!) Qet tu çu qewm û miletêt we nabînî ku wan ji dil îman û bawerî înandibît bi Ellahu Te‘ala û roja qiyametê û paşê di ser wê hindê ra, ew rabin hej wan biken; ewêt ku dujminatî û neyariya Ellahu Te‘ala û Pêxemberê Wî diken, xwe heke ew babêt wan bin yan kurêt wan bin yan birayêt wan bin, yan jî (û cax û) ‘eşîreta wan bin. Eha ew ew in; ewêt ku Ellahu Te‘ala îman û bawerî di dilê wan da nivîsî û qayim ragirtî û bi harîkarî û quweta xwe ew yêt xurt kirîn û dê wan bete nav wan Biheştêt rengîn; ewêt ku di bin ‘ulî û qesrêt wan ra rûbar diherikin û ew heta hetayê dê bimîne tê da. Ellahu Te‘ala yî ji wan razî ye û ew jî ji Ellahu Te‘ala dirazî ne. Eha hema her ew in hizba Ellahu Te‘ala û tagirêt dînê Wî. Hûn baş bizanin, yêt serferaz û serketî hema her hevalbend û tagirêt dînê Ellahu Te‘ala ne.”[991]

Îmamê Qurtubî (Xudê jê razî bît) dibêjît: Îmamê Malik (Xudê jê razî bît) ev ayete ya kiriye delîl li ser dujminatiya Qederiya û terk kirna civatêt wan.

---

991 Sûreta Mucadele 22

Qederiye firqeyeka xirhayî ne, wacib e em êkûdu ji zerera fikir û bîr û baweriyêt wan hişyar bikeyîn.

Firqa Qederiya qudret û şiyana Xudê Te'ala ewa ku bêhempa û 'ilm û zanîna Wî ya ezelî; anku wê 'ilm û zanîna Wî ewa ku bi her tiştekî hey; ewêt qewimitîn û ewêt ku dê ji nûka jî çêbin û peyda bin, Qederî wê 'ilm û zanîna Xudê Te'ala ya ezelî înkar diken, ew dibêjin: Xudê Te'ala fê'lêt 'ebda xulqiyet naket, ew 'ebda dikene xaliqêt fê'lêt wan, ew dibêjin: Xudê Te'ala bi hatin û çêbîna çu tiştan naheshît û nuzanît hat ku ew tişt peyda nebin, anku gava ew tişt peyda bûn û çêbin ji nûka Xudê Te'ala pêdiheshît û dizanît).[992]

Qederiye, Qederê; 'îlm û zanîna Xudê Te'ala ya ezelî anku wê zanîna Wî; ewa ku ji ezel da bi hemî tiştan hey û wê nivîsîna Wî; ewa ku di ezel da, Wî di Lewhê mehfuz da nivîsî; bo peyda bîna her tiştekî; ku ka çewa Wî hezkiriye û li wî demî yê ku Wî bo peyda bîna her tiştekî danadî, ew tişt hemî anegora wê îrada Wî çêdibin û peyda dibin, ew anku Qederiye, wê Qedera Xudê Te'ala danadî bo peydabîna van tiştan hemyan ew red û  înkar diken!

Gelek hilkolîn û li dûv çûna qederê ne ya durust e, nê Pêxemberî-selat û selam li ser bin- nehî ya ji wê hindî kirî ku mirov gelek bi nav mesela qederê da biçît. Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: Li demê behsê Qederê hate kirin hûn xwe bêdeng  biken û ne axivin).[993]

Îmamê Tehawî (Xudê jê razî bît) dibêjît: ('Eslê Qederê sireka Xudayî ye; di nav mexluqatêt Wî da, qet çu Milyaketêt nêzîkî Wî û çu Pêxember; Nebî û Resul bi serhilnebîn e û bi serhilnabin jî.[994]

992 Mewsu êt el-Fireq we el-Mezahib- Wezareta ewqfa Misrê
993 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya hesen e
994 'Eqîda Tehawî

Îmamê Ehmedê kurê Henbel (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Hindîke Qedere; Qudret û quweta Xudê Te‘ala ye).[995]

Firqa Qederiya, li dûmahîka zemanê sihabiya, piştî demê herçar helîfêt Pêxemberî-selat û selam li ser bin- li Misrê yêt peyda bîn û derketîn, sihabiyêt Pêxemberî yêt dûmahîkê; wekî ‘Ebdullahê kurê îmamê ‘Umer, Cabirê kurê ‘Ebdullahî, Ebû Hureyreyî, ‘Ebdullahê kurê ‘Ebasî, Enesê kurê Malikî, ‘Ebdullahê kurê Ebî Ewfayî û ‘Uqbê kurê ‘Amirê Cuhenî û geleka ji hevalêt wan jî, wan hemyan wesyet û şîret ya li ewêt dûv xwe ra kirî û yê gotiye wa: Hûn silav nekene ser Qederiya, li demê ew di mirin nivêjê li ser kelexê wan neken û hûn neçine seredana nisaxêt wan jî.

Yê ji rêve ev bîd‘e di derheqa qederê da anku înkar kirna Qederê da aşkira kirî û gotî zelamek bû ji Ehlê Besrayê li Îraqê digotinê: Sensewî (yan jî Susinê) kurê Yunûsê es-Swarî, ev zelame ji Filetiyê Busulman bibû, belê di dûv ra carekadî ew bibû File ve, Me‘bedê Cuhenî ev fikre; anku înkarkirna Qederê ji wî Sensewî (yan jî Susinê) kurê Yunûsê es-Swarî ya wergirtî û wî bi aşkirahî belav dikir. Xeylanê kurê Muslimê Dîmeşqî jî ev fikra înkarkirna Qederê ji Me‘bedê Cuhenî ya wergirtî û bawerî ya pê inadî.

Belê Hucacê kurê Yusufê Seqefî, Me‘bedê Cuhenî li sala 80tê hîcrî yê kuştî û Xeylanê Dîmeşqî jî Xelîfe Hîşamê kurê ‘Ebdulmelîk li Dîmeşqê ew yê kuştî.

Ev firqa Qederiya di navbeyna van her sê kesêt me navêt wan gotîn ya peyda û belav biy anku ji Sensewî (yan jî Susinê) kurê Yunûsê es-Swarî, Me‘bedê Cuhenî û ji Xeylanê kurê Muslimê Dîmeşqî.[996]

---

995 Elmwsu‘etu‘eqîde

996 El-Lferq beyne El-Lferq ya ‘Ebdulqhirê Bexdad î û ‘Eqîda ‘UsmanDemeri

Îmamê Tirmîzî (Xudê jê razî bît) behsê Hesenê kurê îmamê ‘Elî (Xudê ji wan her duka razî bît) diket û dibêjît; Hesenî di derheqa Me‘bedê Cuhenî da yê gotî: (Hişyar bin ey gelî Muslumana! Xwe ji Me‘bedê Cuhenî dûr biken; ew yî xirhaye û ew xelk û ‘alemê jî dixirînît).[997]

‘Ebdullahê kurê îmamê ‘Umer (Xudê ji wan her duka razî bît) dibêjît; Pêxemberî-selat û selam li ser bin- yê gotî: (Qederî mecusiyêt vê ummetê ne, li demê ew nisax di bin neçine sere dana wan û li demê ew di mirin jî neçine ser kelex û cenazê wa).[998]

Qederiye; Qederê redd û înkar diken, ew firqeyeka batil û xirhayî ye, ew ne ji Ehlê-Sunnetê û cima‘etê ne.

Ev firqa he berevaniyê jê fikra xwe diken û dibêjin:

Hindî tiştêt di vê dinyayê da li ser rûyê ‘erdî rûdiden û diqewimin ew ne bi qeza û teqdîra Xudayê Jorî ne, ew hema bi destê mirovan çêdibin û peyda dibin.

Haşa ew îddî‘a diken û dibêjin: Neheqê Xudayê Jorî ye; ku ew ‘ebdêt xwe ‘ezab bidet û mayê xwe di şol û karêt wan biket!

Haşa bi devê wan bît ew dibêjin; “Hemî fê‘ilêt ‘ebda, ‘îbadet û ta‘etê wan û gunehêt wan, bi qeza û qedera Xudayê Jorî peyda nabin û çênabin, ew bi ‘eksa vê hindê dibêjin. Ew dibêjin: Fê‘ilêt ‘ebda bi keyfa wa ye û yêt destê wan da, anku ka ew çewa bixwazin û wan çewa bivêt, ew wesa diken û tîne meydanê” qet çu teserrûfa Xudayê Jorî li ser ‘ebdêt wî nine; (Ew çu mayê xwe di şol û karêt ‘ebda naket) û ew înkara teqdîr û qeza û qedera Xudayê Jorî jî diken. Qederiye firqeyeka ji binî ya batil û xirhayî ye.

997 Şerha ‘îlela Titmizî ya îbn Receb

998 Elbanî (Xudê jê razî bît) yê gotî: Ev hedîs e ya Hesen e

Em dişên li vêrê bo hişyarî hindeka ji taybetmendiyêt wan anku ji bîr û baweriyêt vê firqa xirhayî rêzbikeyn û bêjîn:

- Ew bi biryar û qirara aqilê xwe sîfet û wesfêt Xudayê Jorî hemyan înkar û red diken!

- Ew her kîndarî û neyartiya xwe bo ‘eqîda ehlê-Sunnet û cima‘tê aşkira û pêşçav diken.

-Ew teqdîr û qedera Xudayê Jorî li ser ‘ebda redd û înkar diken.

- Ew delîlêt aqilî pêştêxin û di ser delîlêt neqlîra ra radigirin!

- Ew bi timamî ji êkatiya Qur’an û hedîsêt rast û durust didûr in; anku ew Qur’an û hedîsêt rast û durust pêkve û li gelêk qebûl naken.

Îmamê Şafi‘î (Xudê jê razî bît) dibêjît: (Hûn hema her bi dan û sitandina ‘İlm û zanînê; anku bi munazere kirnê li gel Qederiya baxivin, heke wan bawer kir û teslîm bûn xilas, jixwe heke wan înkar kir ew dê êne tekfîr kirin.[999]

Her Xudê Te‘ala bitinê xweyî û xudanê hemî tiştaye, hemî tişt milkê wî bitinêne, ka Wî çewa bivêt Ew wesa teserufê di milkê xwe da diket; teserufa Wî jî di hemî tiştan da ya bi ‘edalet, hîkmete; bo mesleheta mirova ye, kerem û dan, xêr, başî û çakî hemî her bi destêt Wî ye; li gel Wî çû tişt nebidestê kesekê ye, qet Wî muhtaçî bi kesekê û çû tiştan nîne û nabît.

************

999 Şerha Tehawiyê ya îbn ‘Îzê henefî

Xudê Te‘ala dibêjît:

قُلِ اللَّهُمَّ مَالِكَ الْمُلْكِ تُؤْتِي الْمُلْكَ مَنْ تَشَاءُ وَتَنْزِعُ الْمُلْكَ مِمَّنْ تَشَاءُ وَتُعِزُّ مَنْ تَشَاءُ وَتُذِلُّ مَنْ تَشَاءُ بِيَدِكَ الْخَيْرُ إِنَّكَ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ

“(Ey Muhemmed!) Tu bêje: “Ey Ellahê min! Hema her Tu yî xudanê milk û heyîna. Yê Tu hez bikey, Tu milk û heyîna dideyê û yê Tu hez bikey, Tu milk û heyîna jê distînî. Herdîsa yê Tu hez bikey Tu bi ser têxî û yê Tu hez bikey, Tu rezîl û riswa dikey. Xêr û başî hemî her yêt di destê Te da. Bê şik Ey Xuda Tu, li ser hemî tiştan yî bihêz û şiyan î.”[1000]

Pêxemberê Xudê -selat û selam li ser bin -dibêjît: Keremke ey Xudayê min keremke! Ez herî amademe li ber emrê Te, serferazî hemî her bi Te ye û ji Te ye, başî û xêr hemî her yêt destêt Te da û dana Te ye, şer û xirabî ne ji Te ye û qet Tu hej kirna şer û xirabiyê nakey.[1001]

Xudê Te‘ala dibêjît:

إِنَّ رَبَّكَ فَعَّالٌ لِمَا يُرِيدُ

“Bê şik Rebbê te hema her Wî tiştî diket yê ku Ew hez biket.”[1002]

Xudê Te‘ala dibêjît:

يُثَبِّتُ اللهُ الَّذِينَ آمَنُوا بِالْقَوْلِ الثَّابِتِ فِي الْحَيَاةِ الدُّنْيَا وَفِي الْآخِرَةِ ۖ وَيُضِلُّ اللهُ الظَّالِمِينَ ۚ وَيَفْعَلُ اللهُ مَا يَشَاءُ

1000 Sûreta Alî ‘Îmran 26
1001 Muslim
1002 Sûreta Hud 106

“Ellahu Te‘ala wan, ewêt îman û bawerî înandî di jîn û jiyara dinyayê da û di axretê jî da dê bi gotina xwe qayim û mukûm ragirît anku bi gotina; (La îlahe îllallah) û her Ellahu Te‘ala ye, yê ku kafirêt zalim û zordar dixirînît û ji rêka heq dûr diket. Ellahu Te‘ala hema her wî tiştî diket yê ku Ew hez biket.”[1003]

Xudê Te‘ala dibêjît:

لا يُسْأَلُ عَمَّا يَفْعَلُ وَهُمْ يُسْأَلُونَ

“Qet pisyar ji Ellahu Te‘ala naête kirin (û hedê kesekê jî nîne) biket diderheqa wî tiştî da yê ku Ew diket, belê pisyar dê ji wan hemyan ête kirin di derheqa wan kar û ‘emela da ewêt ku ew diken.”[1004]

Welhasil, divêt, bizanîn Fê‘il û kirnêt ‘ebda bal wan ve; bi kirin, kesb û îxtiyara wan ve têne lê dan, belê bal Xudê Te‘ala ve bi xulqiyetkirin Wî, bi qedera Wî danadî û bi şiklê çêbîna Wî viyayî têne lê dan, bo mirovan hezkirin û îradet ya hey, belê ev hezkirin û îradeta mirovan bi hezkirina Xudê Te‘ala ve ya girê daye, ji hezkirina Xudê Te‘ala dicuda nînin û di ber hezkirina Xudê Te‘ala ra naken, vêca çêbîn û durust bîna her nefseka hebît her bi Xudê Te‘ala ye, bêy destûra Wî ew neşên îman û baweriyê bînin, anku her Xudê Te‘ala bi hezkirina xwe vê hindê bo wî ‘ebdê ew hesbiket bi sanahî têxît û sehildiket ku ew îman û baweriyê bînît, qet‘iyen xwe çî tiştê hebît bêy hezkirina Xudê Te‘ala çênabît.[1005]

Di vî demê em tê da dijîn gelek ji van firqêt xirhayî; ewêt ku ketîne nav şîrkê, kafiriyê û bîd‘a ew navê Busulmana û Îslametiyê ji direw didanine ser xwe.

---

1003 Sûreta Îbrahîm 27
1004 Sûreta Enbiya 23
1005 Fethul-Qedîr: Şewkanî
Sûreta Hûd 88

Ma wesa û bi wî halî; anku li gel wê şîrkê, kafiriyê û wan bîd'a yêt ku ew di nav da digevizin, qet'iyen kesek neşêt bêjîte wan Busulman yan jî wan Busulman qebûlbiket.

Heke tu Xudê neket, wan bi wî halî Busulman hisab bikey, hîngê ma çî ferq û cudahî dê di navbeyna te û wan da hebît?

Divêt, çû caran tu nebêjî ye wan; Ewêt ku li ser van rêk û rêbazêt bêbinîşe û batil; ewêt ku ji direw û bi bêbextî navê Busulmanetiyê danadiye ser xwe Busulman.

Nê Busulman hema her ew in; ewêt ku li ser wê rêk û rêbazê diçîn; ewa ku ehlê-Sunnet û cima'tê anku Selefêt salih pêve digirêdayî.

Wacib e li ser me, ku em hema her guhê xwe bideyne wan zana û 'alimêt xwe; ewêt ku di Xudayî û Rebbanî; ewêt ku li ser rêka pêşiyêt ummetê; anku li ser rêka Selefêt salih, ewêt ku her bi delîlêt zelal û rohin gazî xelk û 'alemê diken; ku bên îman û baweriyê bînin bi 'eqîda rast û durust; 'eqîda Ehlê- Sunnet û cima'etê, 'eqîda Selefêt salih anku Sihabî, tabi'î û tabi'êt tabi'iya da ku ew ji wan firqa hemyan; ewêt ku şîrkê, kafiryê û bîd'a pişta wan şikandî û ew bi rûreşî cuda û veder kirin ji ummeta Muhemmedî -selat û selam li ser bin-.

Xudê Te'ala pê şahide ev e, ez jî li ber ronahiya vê ayeta jêrî dibêjim:

إِنْ أُرِيدُ إِلاَّ الإِصْلاَحَ مَا اسْتَطَعْتُ وَمَا تَوْفِيقِي إِلاَّ بِاللّهِ عَلَيْهِ تَوَكَّلْتُ وَإِلَيْهِ أُنِيبُ

"Belê, hindî ji min bêt ez bi xwe yê pêk înandin û çêkirnê me û serketina min hema her bi Ellahu Te'ala ye.

Min pişta xwe qayim ya bi Wî ve girêdayî û zivirîna min her bal Wî ve ye."[1006]

Ez jî her wekî 'ebdê salih gotî; dêbêjim çûnku ew bo me nimûnen e:

فَسَتَذْكُرُونَ مَا أَقُولُ لَكُمْ وَأُفَوِّضُ أَمْرِي إِلَى اللَّهِ إِنَّ اللَّهَ بَصِيرٌ بِالْعِبَادِ

"Vêca jinihe wêve eva ku ez bo hewe dibêjim dê ête bîra hewe û hûn dê baş zanin, ez bi xwe hema hemî şol û karêt xwe dispêrme Ellahu Te'ala. Bê şik Ellahu Te'ala, haj hemî 'ebdêt xwe heye û Ew her wan hemyan bi timamî dibînît."[1007]

Herdîsa ez jî dibêjim her wekî Hewwariya (Xudê ji wan razî bît); ewêt ku sihabiyêt 'Îsayî Pêxemberî bûn -silav li ser bin- gotî:

رَبَّنَا آمَنَّا بِمَا أَنزَلْتَ وَاتَّبَعْنَا الرَّسُولَ فَاكْتُبْنَا مَعَ الشَّاهِدِينَ

"Ey Rebbê me! Me îman û bawerî înand bi wî tiştî yê ku Te hinartiye xwarê û ev e em bîne tabi'êt Pêxemberê Te. Vêca Tu me ji wan şahida binvîse ewêt; ku şehdekiyê diden ku Tu yî bê şirîk û hevalî û êkî bitinê yî."[1008]

Ez vê du'a Qur'anî jî bo xwe û bo hewe ji Xudayê jorî dikem û dibêjît:

رَبَّنَا لا تُزِغْ قُلُوبَنَا بَعْدَ إِذْ هَدَيْتَنَا وَهَبْ لَنَا مِنْ لَدُنْكَ رَحْمَةً إِنَّكَ أَنْتَ الْوَهَّابُ

1006 Sûreta Xafir 14
Sûreta Alî 'Îmra 53
1007 Sûreta Xafir 14
1008 Sûreta Alî 'Îmra 53

“Ey Rebbê me! Piştî ku Te em înandîne ser rêka heq û hîdayetê, Tu dilêt me xwahr neke. Tu ji layê xwe ve rehmekê bi me bibe. Beşik hema her Tu yî xudanê dan û kerema (ey Xudayê min!).”[1009]

Û li dûmahîkê jî her wekî îmamê Acirî (Xudê jê razî bît) du‘a kirîn û gotî, ez jî her wekî wî dibêjim: (Ez hîvî û rîca ji Xudayê Jorî dikem ku Ew bi minet û kerema xwe, me û hewe bikete ji wan kesa; ewêt ku sunneta Pêxemberî -selat û selam li ser bin- pê sax dibît û vedijîte ve û bîd‘e pê dimirin û pûç di bin dilêt ehlê heqiyê pê qaîm di bin û nefsêt wan; ewêt ku bi dûv hewa û hewesê xwe ketîn pê dişkêt û pûç dibît).[1010]

Xudê Te‘ala dibêjît:

وَإِنَّ لَنَا لَلْاٰخِرَةَ وَالْاُولٰى

“Bê şik hindî tiştêt di axretê da û hindî tiştêt di dinya yê da heyn, ew hemî her yêt Me bitinê ne.”[1011]

لَهُ الْحَمْدُ فِي الْأُولَى وَالْآخِرَةِ وَلَهُ الْحُكْمُ وَإِلَيْهِ تُرْجَعُونَ

“Di dinya û axretê da medh û sena her bo Wî ne. Hukumdarî her ya Wî bitinê ye û hûn hemî her bi nik Wî ve dê êne zivirandin.”[1012]

وَصَلَّى اللَّهُ وَسَلَّمَ وَبَارَكَ عَلَى نَبِيِّنَا مُحَمَّدٍ وَعَلَى آلِهِ وَأَصْحَابِهِ أَجْمَعِينَ.

We sellellahu weselleme webareke ‘ela nebiyyîna Muhemmedîn we ‘ela alîhî we eshabîhî ecme‘în

1009 Sûreta Alî ‘İmra 8
1010 Ji kitêba el-Îbane, ya Îbn Bete
1011 Sûreta Leyl 13
1012 Sûreta Qeses 70

